**Nûbihar**
Pak Ajans Yay. Tur. ve Dış Tic. Ltd. Şti.
Zeyrek Mah. Serdab Sok. No: 26/3 Fatih-İstanbul
Tel & Faks: 0212 519 00 09
www.nubihar.com | email: info@nubihar.com

Yayın Sertifika No: 51437

Weşan No: 341 | Kurdolojî

Hekîmtiya Kurmancî
Dr. Tekin Çifçi

ISBN: 978-625-7383-31-8
Çapa Yekem: 2022

•

**Gerînendeyê Giştî yê Weşanê**
Süleyman Çevik

**Sererastkirin**
Zeki Akdağ

**Mîzanpaj**
Huseyn Şemrexî

**Berg**
IHB

•

**Çapxane**
Meteksan Matbaacılık ve Teknik San. Tic. Aş.
Beytepe Köy Yolu No: 3
06800 Bilkent-Çankaya / Ankara
Matbaa Sertifika No: 46519

**Dr. Tekin ÇİFTÇİ** di sala 1977an de li gundê Narînceyê yê li ser Semsûrê hatiye dinyayê. Dibistana seretayî û ya navîn li wir xwend. Di sala 1997an de ji Zanîngeha Dîcleyê ya li Diyarbekirê wekî mamoste mezûn bû. Li Amed û Mêrdînê li dibistanên cihê mamostetî kir. Di vê navberê de xebatên xwe yên li ser Kurdî û Kurdolojiyê domand. Di sala 2013an de li Zanîngeha Mardîn Artukluyê di beşa Makezanista Ziman û Çanda Kurdî de lîsansa bilind qedand. Doktoraya xwe jî di sala 2019an de li Zanîngeha Dîcleyê ya Diyarbekirê di beşa Ziman û Çanda Kurdî de kuta kir. Li ser folklora Kurdan, di kovarên akademîk de gelek gotarên wî weşiyan. Beşdarî gelek kongre, sempozyûmên neteweyî û nav-neteweyî bû. Li Mêrdînê xebatên xwe yên li ser çand û folklora Kurdî didomîne. Zewicî ye û bavê du zarokan e.

**Berhemên wî**

*Kilam û Jin* (Lêkolîn, Nûbihar 2014)
*Zeviya Ramûsanê* (Kurteçîrok, Nûbihar, 2015)
*Cemîle /Adıyaman Mutfağı* (Edîtorî, Tevî Mehmet Öncü, ATAV, 2015)

# NAVEROK

# PÊŞGOTIN

Hîmê vê xebata di destê we de di sala 2015an de hate danîn. Di vê pêvajoyê de –dîsa li ser vî hîmî– xebateke doktorayê ku çar salan ajotiye jî derkete holê. Zimanê xebatê yê li qadê Kurdî bû. Me jî xwest ku ev xebat bi zimanê xwe yê xweser, Kurdî (bi zaravayê Kurmancî) bigihêje ber destê xwendevanan. Lewma ji roja pêşî heta roja ku hatiye çapkirin em li ser xebatê hûr bûn, me hewl da ku xebateke bi rêk û pêk bikeve nav dîwarê çanda Kurdî. Ji ber vê yekê jî bi hêsanî mirov dikare bibêje ku ev xebat ji serî heta binî bi rê û rêgezên zanistî hatiye amadekirin. Hîmê xebatên bijîşkiya gelêrî, wekî hemû binbeşên din ên folklorê, li ser lêkolîn û berhevkirinên li qadê ye. Mirov çiqas qadê nas bike, xebatên li ser qadê hûr û kûr bajo, dê civakê jî ewqas baş binase. Qada Semsûrê, ji aliyê dewlemendiya çanda bijîşkiya gelêrî ve ji herêmên din ne kêmtir e. Lêbelê ji aliyê berhevkirin, dabeşkirin, nirxandin û danasîna vê dewlemendiya folklorê ve valahiyeke mezin hebû. Mebesta vê xebatê –ku wekî rîsaleya doktorayê jî hatiye amadekirin û pêşkêşkirin- yek jê ew e ku li deryaya xebatên folklorî ya Kurdan dilopekê lê zêde bike û rê li ber lêkolînên li ser folklora herêma Semsûrê veke. Helbet berî vê xebatê, gelek berhemên folklorî li ser herêma Semsûrê hatine amadekirin. Lê li ser bijîşkiya gelêrî ya herêma Semsûrê ev xebata di destê we de ya yekemîn e.

Bijîşkiya gelêrî bi mirovan re dijî. Bi mirina her kesekî pîr yan navsere re bijîşkiya gelêrî jî hinekî kêm dibe. Lê hinek jê jî -wekî

mîrateyekê- ji nifşên nû re dimîne. Ji aliyê din ve, bi pêşketinên di warê aborî, zanyarî, teknolojî û civakî de bijîşkiya gelêrî jî kirasê xwe diguherîne. Piştî xebatên li qadê em gihîştin wê encamê ku bi têkçûyîna rêbazên bijîşkiya gelêrî re gelek peyv, gotinên gelêrî û navên nebatan ên Kurdî jî ji holê radibin. Bi vî aliyî ve, ji bo parastina gencîneya peyvên Kurdî-Kurmancî jî dê ew xebat deqeke piçûk li dîrokê bixe. Qet nebe em di wê baweriyê de ne. Bi vê hişmendiyê, berî ku em dest bi xebata li qadê bikin, li ser xebatên ku di vê mijarê de hatine kirin lêgerîn û xwendinên pêwîst hatin kirin. Li gorî van xwendin û lêkolînan nexşerêya xebatê hate amadekirin. Rê û rêbaza xebatê hate zelalkirin û pirsên ku dê ji jêderan werin pirsîn hatin amadekirin. Hin kesên ku di vê mijarê de xwedî agahî û tecrûbe ne -wekî jêder- hatin diyarkirin û bi wan re têkilî hate dayîn. Wan kesan jî piştî hevpeyvînan berê me da hin kesên din. Bi vî rengî em gihîştin gelek kesên jêder. Heta ku ji destê me hat li gorî rê û rêbazên zanistî keresteyên bijîşkiya gelêrî hatin berhevkirin. Ne gengaz e ku em xwe bigihînin hemû jêderan. Lewra her endamekî civakê di vî warî de xwediyê hin serpêhatî, tecrûbe û agahiyan e. Ji ber vê yekê kesên ku ji aliye civakê ve wekî "zana" têne naskirin, xwediyê agahiyên girîng in, hatin hilbijartin. Bi wan re di demên guncav de, hevpeyvînên rûbirû hatin çêkirin. Di dema hevpeyvînan de, bi destûra wan, dengê wan hate tomarkirin, wêne hatin girtin. Di cihên pêwîst de nîşe jî hatin girtin. Piştre jî dengên ku hatine tomarkirin yek bi yek hatin deşîfrekirin û nivîsandin. Nivîs, li gorî mijarên bijîşkiya gelêrî hatin dabeşkirin û bi vî rengî naveroka xebatê hate amadekirin. Ji aliyê rê, rêbazên xebatê û naverokê ve dibe ku ev xebat xwediyê hin kêmasiyan be. Em ji ber van kêmasiyan kesekî tawanbar nakin. Hemû berpirsyarî ya me ye.

Pêvajoya xebatê, ji bo me ji destpêkê heta roja dawiyê rêwîtiyeke gelekî zehmet lê ewqas jî bi kelecan bû. Piştî vê xebatê meraq û dilxwaziya me ya li ser folklora Kurdî û bi taybetî jî li ser bijîşkiya gelêrî ya Kurdan zêdetir bû. Em têgihîştin wê baweriyê ku her pêkanîn û kevneşopiya bijîşkiya gelêrî bi xwe xwediyê

gelek taybetmendiyan e û hêjayî xebateke serbixwe ye. Tiştekî din ku bala me kişand jî ew bû ku afirîner û bikaranînerê van derman û pêkanînan gelek jê jin in. Jin bi xwe -wekî hemû qadên din ên jiyanê- di navenda pêkanînên bijîşkiya gelêrî de ne. Ev tevger piranî ji hestiyariya dayikbûnê derketiye holê. Lewra, li herêma me jî wekî gelek herêmên din ên dinyayê, ji jidayikbûnê heta bi demeke dirêj dayik ji parastin û tenduristiya zarokan berpirsyar in. Bêtir jin demê bi zarokan re derbas dikin. Ew xebatên bi vî rengî ji bo nasandina çanda Kurdan gelekî girîng in. Ji ber ku her pêkanîneke bijîşkiya gelêrî ji hişmendiya civakê, nêrîn û baweriyên civakê ên derbarê pirsgirêkên tenduristiyê de nîşan didin. Divê xebatên bi vî rengî li her herêmê û bi berfirehî bêne meşandin. Ew yek dê zanist û civakê hinekî din ber bi hev bîne. Em di wê baweriyê de ne.

**Spasî**

Hîmê mijara vê xebatê digihêje serpêhatiyeke min a dema zaroktiyê. Dema ku ez şeveke reş di rêyeke dûrî gund û gundikan de tirsiyam –min digot qey ziravê min qetiyaye– jineke navsere bi şareke reş tirsa min vegirt. Piştî vê rîtûelê tirs li dora min nema û ez bê xof û tirs û xem razam. Gelo wê "pîrik"ê çi kir ku tirs ji dilê min derket û derûniya min baş bû? Ew yek ji bo min bû meraqek û bi min re mezin bû. Dema ku min ev serpêhatiya xwe ji şêwirmendê xwe re vegot û daxwaza xebatê ya li ser bijîşkiya gelêrî ya Kurdan vekir, wî bi dilxwazî û kêfxweşî erê kir. Bi vî rengî rê li ber vê xebatê vebû. Min da ser şopa nexweşiyan û çareserkirina pirsgirêkên tenduristiyê yên bi rêbazên bijîşkiya gelêrî. Derî li derî vebû û ez ketim nav deryaya folklora Kurdî.

Di pêvajoya amadekirina vê xebatê de keda gelek kesan heye. Helbet ev rûpel wê derfetê nade ku em navê hemûyan li vir bi bîr bînin. Lê divê ku ez bi taybetî navê çend kesan li vir bi bîr bînim û ji wan re spasiyên xwe pêşkêş bikim.

Ez di serî de ji Doç. Dr. Hayreddin Kızıl re gelekî spas dikim. Wî bi dîtin û ramanên xwe, azadiya xebatê da min, şêwirmendiya min kir û bi kedeke gelekî hêja alîkarî da min. Her weha

ez ji Doç. Dr. Mustafa Öncü û Alk. Doç. Dr. Hacı Önen re jî spas dikim. Bi bêhna xwe ya fireh li min guhdarî kirin û bi pêşniyazên xwe alîkarî dan min. Derbarê metodolojiya xebatê de bi şîrove û pêşniyazên xwe rêya min ronî kirin. Kekê min Nedîm Çifçi, di pêvajoya hevpeyvînên li qadê de ji bo min gelek ked da. Gund bi gund, tax bi tax û bi min re geriya û hevaltiya min kir. Bi alîkariya wî gelek jêderan bi dilsozî hest û zanînên xwe bi min re parve kirin. Diya min Zînê û xwîşka min a Ayten serpêhatiyên xwe, zanînên xwe yên derbarê bijîşkiya gelêrî ya herêma Komîrê de ji min re vegotin. Hemû xwîşk û birayên min deriyê mala xwe li min vekirin. Bi rojan ez li wan bûm mêvan. Mala tevan ava be.

Hevsera min Sema Çifçi, di vê pêvajoya dirêj ya xebatê de, him ji min re alîkarî kir û him jî bi zarokên me Civan Zana û Delal Dicle re mijûl bû. Ez ji wê re jî spasdar im. Ez ji dostên xwe yên hêja û dilovan Yusuf Çiftçi û Erhan Arslan re gelekî spas dikim. Di warê teknîkî de alîkarî dan min. Her weha çi jin çi mêr dibe, rûsipiyên Kurd ku me bi wan re hevpeyvîn çêkir, ji me re mazûbaniyeke baş pêşkêş kirin û zanînên xwe bi awayekî dilsoz bi me re parve kirin. Mala tevan ava be.

**Dr. Tekin ÇİFÇİ**
**Mêrdîn 2020**

*Diyarî ji bo diya min a hêja*
*Zîna Mehemed Eliyê Eliyê Mirtê;*
*Diya Delal Dicle û Ciwan Zana hevsera min Sema*
*û hemû dildarên çanda Kurdî...*

# DESTPÊK

Folklor, zanisteke berfireh e ku di nava xwe de hemû nirxên şênber û razber ên ku civak wekî kevneşopiyekê dijî dihebîne. Folklornas, ew kes e ku hemû zanyariyên civakê û çavdêriyên xwe bi şêweyeke zanistî berhev dike, tomar dike, dabeş dike û dinirxîne.

Bijîşkiya gelêrî, wekî binbeşeke folklorê tê pejirandin. Gel, bi sedan salan ji ber sedemên siyasî, aborî, çûn û hatin û hwd. ji navendên bajaran dûr maye. Di van serdeman de bi pirsgirêkên tenduristiyê re rû bir û maye û hewl daye ku ji van pirsgirêkan re çareseriyan bibîne. Bi demê re zanîn, serpêhatî û kevneşopî gihîştine ser hev û bijîşkiya gelêrî derketiye holê. Bawerî, liv û tevgerên civakê jî bandoreke mezin li ser bijîşkiya gelêrî dikin. Bi pêşketinên di qada tiba nûjen, xwendin û perwerdehiya gel, derfetên çûn û hatinê, pêşketinên di warê teknolojiyê de, rewşa aboriya civakê û hişmendiya civakê bandora li ser mijara tenduristiyê, pêkanîn û rêbazên bijîşkiya gelêrî jî kêm an zêde dibin. Lê bijîşkiya gelêrî qet ji holê ranabe. Bes mirov dikare bibêje ku kirasê xwe diguherîne.

Semsûr (bi navê xwe yê Tirkî Adıyaman) û derdora wê ji aliyê dîrokî, erdnîgarî û çandî ve xwediyê dewlemendiyeke hêja ye. Bawerî û pêkanînên ku ji hezar salan û vir de hatine, bi bawerî û çanda Îslamiyetê re bûne yek û dewlemendiyeke cihêreng ava kirine. Bawerî û hin pêkanînên kevnare kiras guhertine û di bin banê Îslamiyetê de hebûna xwe parastine. Mirov, di her

qada jiyanê de dikare li van bawerî û pêkanînan rast bê. Paşxaneya gelek ji van pêkanîn û baweriyan ji şaristaniyên kevnar tê. Guncav e ku mirov li her quncikekî bajêr li dar, kevir yan aveke pîroz rast bê. Lê li gorî encama xebata me baweriya nifşên nû -bi taybetî jî nifşên ku li bajaran mezin dibin- bi pêkanînên bijîşkiya gelêrî roj bi roj kêmtir dibe.

Li gelek gund, gundik, bajarok û navçeyên Semsûrê her weha li navenda Semsûrê, gelek kes ji bo çareserkirina pirsgirêkên civakê yên tenduristiyê serî li rêbazên bijîşkiya gelêrî didin. Hin ji wan kesan, wekî "ocaxan" bi rêya "destdan" û "destwergirtinê" pêkanînên bijîşkiya gelêrî bi kar tînin. Gelek kes jî hene ku ne "ocax" in lêbelê wekî "hekîmê loqman", "pîrik", "tixtorê Kurmancî", "hekîmê Kurmancî" têne binavkirin. Ew kes nexweşînên mîna şikestin, jicihderketin, navketin, boçikketin, zerik û hwd. derman dikin. Ew kesên weha di çareserkirina pirsgirêkên tenduristiyê de kel û pel, giya, xurek û kanên ku li herêmê hene bi kar tînin. Ji ber vê yekê li herêmê ji derman, rêbaz û pêkanînên ku têne bikaranîn re bi giştî "Dermanên Kurmancî" tê gotin.

Bijîşkiya gelêrî xwe -digel dermanan- dispêre baweriyê. Ji ber vê ye ku di pêkanînên bijîşkiya gelêrî de digel kanî, av, dar û kevirên pîroz, gorên zatên girîng ên pêşengên Îslamê (car caran pêşengên baweriyên din jî) yên wekî pîr, dede, şêx, mela, hecî û hwd. jî cihekî girîng digrin. Gel, ji bo çareserkirina pirsgirêkên xwe, heger sax bin diçin bal wan kesayetên "xwedî menewiyat" û lava ji wan dikin. Heger miribin gel diçe ber gora wan kesên "pîroz" ango "qencên Xwedê". Li wir qurbanan serjê dikin û diayan dikin da ku nesaxê wan baş bibe; pirsgirêka wan çarseser bibe. Av û axa derdora wan goran wekî derman tê pejirandin. Ava ku ji kaniyên dora goran tê wekî şifa tê vexwarin; bi wê avê ser û çavên xwe dişon. Axa dora wan goran wekî derman dixin nav avê û bi wê avê devera laşe xwe yê nesax dişon.

Li herêma Semsûrê, gel ji bo ku serdemên girîng ên jiyanê yên wekî jidayikbûn, zewac û mirin di nava aramiyê de derbas bin, serî li gelek pêkanînên bawerî û bijîşkiya gelêrî dide. Her weha ji bo ku ji bin barê hin pirsgirêkên din ên rojane rabe serî

li hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî dide. Di dermankirina nexweşîn û pirsgirêkên din ên tenduristiyê de serî li riwekên wekî talik, çîçekmast (beybûn), gezo, gezgezk, pirpar û hwd.; xurekên çandiniyê yên wekî dims (mot), bastêq, pîvaz, sîr û hwd; xurekên sewalvaniyê yên wekî mast, şîr, hêk û hwd. û kanên wekî xwê, avşor, avgerm, ax, xîj (sîlik) û hwd. bi kar tîne. Di dermankirina hin nexweşînan de sewalên wekî zîro, kosî, şeytanok û hwd. têne bi kar anîn.

Wekî ku li jor jî hate gotin, Semsûr ji aliyê pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî ve gelekî dewlemend e. Mijara vê xebatê, ji her aliyî ve derxistina holê ya vê dewlemendiyê ye. Em baş dizanin ku ev yek tenê bi xebateke li qadê ne pêkan e. Lê me hewl da ku di vê mijarê de destpêkeke baş pêk bînin. Berî ku dest bi xebata li qadê bê kirin li ser mijarê lêkolîn, lêgerîn û xwendinên pêwîst hatin kirin. Plan, rê û rêgezên xebatê hatin diyarkirin. Pirsên ku dê li jêderan werin pirsîn li qorî rêgezên lêkolînên folklorî û pirtûkên metodolojiyê yên li ser folklorê hatin amadekirin. Di amadekirina pirsan de taybetiyên mijarê, hesasiyetên gelê herêmê li ber çavan hatin girtin. Berî ku hevpeyvîn werin kirin bi kesên têkildar re bi rêya telefonê têkilî hate danîn. Piştî şêwra bi jêderan re, dem û devera ku hevpeyvînên rûbirû dê bêne kirin hatin diyarkirin. Li gorî xwezaya xebatê, ne gengaz e ku em bi hemû kesên ku di mijara bijîşkiya gelêrî de xwedî tecrûbe û agahî ne re bikevin têkiliyê û bi wan re hevpeyvînan pêk bînin. Lewra, ev yek hem ji aliyê dem û derfetan ve hem jî ji aliyê hejmara xebatkaran, aborî û erdnîgariyê ve ne guncav e. Kesên ku dê bi wan re hevpeyvîn were pêkanîn bi rêbaza "gogberfê" hatin diyarkirin. Ango her kesekî ku me bi wî/ê re hevpeyvîn pêk anî berê me da kesekî/e din. Berî ku hevpeyvîn dest pê bike, destûra hevpeyvînê û bikaranîna ew agahiyên ku dê bêne dayîn ji jêderan hate sitendin. Piştre, bi rêbaza çavdêrî û hevpeyvînên veguhestî, hevpeyvîn hatin kirin. Di hevpeyvînan de notên pêwîst hatin girtin, dengên hevpeyvînê hatin tomarkirin û dîsa bi destûra jêderan hin wêne jî hatin wergirtin. Agahiyên ku hatine tomarkirin, li kompîturê hatine

barkirin, deşîfrasyon û analîzên pêwîst hatin kirin. Piştre, li gorî pêwîstiya xebatê hatin dabeşkirin, nirxandin û şîrovekirin. Herî dawî, encamên ku bi dest ketine, bi xebatên din ên lîteraturî re hatin berawirdkirin.

Ev xebat ji destpêkekê û sê beşan pêk tê. Beşa yekemîn ya xebatê ji metodolojiya xebatê, agahiyên li ser mijarê û herêma Semsûrê pêk tê. Di vê beşê de li ser mebest, rêbaz, mijar û pêwîstiya xebatê, taybetiyên herêma xebatê û çarçoveya têgehî ya xebatê hin agahî hatine dayîn. Her weha, li derdora pirsên wekî, li dinyayê rewşa xebatên bijîşkiya gelêrî çawa ye, li herêma Kurdan kîjan nexweşîn hene, navê wan çi ne û bi kîjan rêbazan têne dermankirin, hin agahî hatine pêşkêşkirin. Her weha, Semsûr ji aliyê dîrok, erdnîgarî, gelha, aborî, hin taybetiyên devoka Kurmancî ya herêmê û cih û warên pîroz ve hatiye nirxandin.

Nexweşîn û pirsgirêkên tenduristiyê yên ku mirov bi wan re rû bi rû dimîne, di her dem û serdema jiyanê de diguherin. Wekî mînak, hin cureyên nexweşiyan hene ku piranî di serdema zaroktiyê de derdikevin holê. Zerika zaroktiyê, mîrkutok, sorik hin ji van nexweşiyan in. Hin nexweşîn jî hene ku di her serdema jiyanê de derdikevin pêşiya me. Navçûyîn (emel), şeliqîn, tirs, qeyrana dil û hwd. tenê çend mînak in. Di beşa duyemîn de, bawerî û pêkanînên dermanên Kurmancî û bijîşkiya gelêrî ya li herêma Semsûrê li gorî serdemên jiyanê hatiye lêkolînkirin û nirxandin. Agahiyên li ser nexweşînên ku di nava gel de têne zanîn, kel û pel, xurek û riwekên ku di dermankirina wan de têne bikaranîn tevî rêbazên pêkanînan hatine dabeşkirin, nirxandin û raberkirin.

Nexweşîn, diyarkirina nexweşiyan, parastina kesan ya ji nexweşiyan û hewldanên çareserkirina nexweşiyan di jiyana mirovan de cih û demeke girîng digre. Di dermankirin û xelasbûna ji nexweşiyan de bawerî jî cihekî girîng digrin. Bi taybetî di bijîşkiya gelêrî de baweriya bi kesên wekî dede, şêx, mela, dîwane û hwd.; baweriya bi gor, tirb û êrikan; baweriya bi dar û ber, çem û kanî û kevir û latan cihekî girîng digre. Li

herêmê gelek kes hene ku bi rêbaza hin nistiyan[1] ango bi rê û resmên bêderman nexweşînan derman dikin. Ji wan re "ocax" tê gotin. Ew kesên xwedî ocax -wekî kevneşopiyekê- ji sedan salan berê û heta niha nexweşînan bi heman rêbazê derman dikin. Gelek taybetiyên wan ocaxan hene. Ya herî girîng ew e ku di çareserkirina nexweşînan de dermanan bi kar nayînin. Bi qasî lêkolîn û hevpeyvînên ku me kirine gel, ji bo çareserkirina duwazdeh nexweşiyan serî li ocaxan dide. Car caran ji bo heman nexweşiyê li herêmên cihê malbatên ocaxan ên cihê hene. Di beşa sêyemîn de li herêma Semsûrê, pêkanînên bijîşkiya gelêrî li gorî ocaxan hatiye nirxandin. Di bin vê sernavê de têgeha ocax, çanda ocaxîbûnê, rêbazên ocaxîbûnê, cureyên ocaxan, nexweşînên ku ji aliyê ocaxan ve têne dermankirin û hwd. hatine nirxandin.

---

1 Nistî, ew pêkanînên bêyî derman in ku nexweşînan tedawî dikin, wekî firkandin, xêzkirin, tenî têdan û hwd. Li hin herêman jî ev peyv bi vê meneyê ye: Gava hekîmek pîr dibe û êdî nikare hekîmtiya xwe pêk bîne, tecrûbeya xwe hînî kesekî din dike û destura/îzna tedawiyê dide wî, a ji vê destûrê re nistî tê gotin.

# BEŞA YEKEMÎN
## AGAHIYÊN GIŞTÎ YÊN DERBARÊ XEBATÊ DE

### Armanca Xebatê

Em ji bermahiyên dîrokî fêm dikin ku li herêma Semsûrê, ji serdema Paleolîtîk heta niha gelek şaristanî bi cih û war bûne. Her gelê ku li ser vê xakê bi cih û war bûye, şaristaniya xwe li ser şaristaniya berî xwe ava kiriye. Ji ol û baweriyan bigre heta bi rê û rêgezên jiyanê; ji çandiniyê bigre heta bi pergala sazkirina rêvebiriyê di hemû qadên jiyanê de pêşketinên nû li ser yên berê zêde kirine. Şikefta Palaniyê, Xerabeyên Pîrînê mînakên vê yekê ne. Li Semsûrê, li deverên cihê gelek bermahiyên piştî serdema Paleolîtîk jî heta îro li ser piya mane. Li her devera bajêr bermahiyên Asûr, Hîtît, Part, Roma, Sasanî, Selçûqî û Osmaniyan hene.[2] Peykerên li serê çiyayê Nemrûdê, Keleha Kolikê, stûnên li derdora Bêhisniyê mînakên vê yekê ne. Ji ber vê yekê, bi hêsanî em dikarin bêjin ku Semsûr xwediyê dîrok û çandeke gelekî dewlemend û kevnare ye.

Di nav dewlemendiya çandî ya Semsûrê de, wekî qadek ji

2 Ahmet Ali Bayhan, "Adıyaman İli ve İlçelerinde Yüzey Araştırması-2000", r. 19. *Araştırma Sonuçları Toplantısı*, C.1, Kültür Bakanlığı Milli Kütüphane Basımevi, Ankara 2002, r. 1-16.

qadên folklorê, bijîşkiya gelêrî û ocax jî cihekî girîng digrin. Lewra, nexweşîn, kul û birîn; tirs û xofa ji mirinê bûye perçeyek ji jiyana mirov ya asayî. Nexweşîn, kul û birîn çiqas bûyerên ji rêzê bin, mirin û tirsa ji mirinê jî ewqas bi saw û xof e. Ji ber vê yekê mirovan her dem hewl daye ku xwe ji nexweşînan biparêzin, heger bi nexweşiyekê ketibin di zûtirîn demê de jê xelas bibin û mirinê ji xwe dûr bixin. Ji bo vê yekê jî di her serdema mirovatiyê de mirovan serî li rêbazên sêhrî, dermanên bijîşkî, dever û tiştên pîroz daye.

Li herêma Semsûrê û derdora wê ji bo her nexweşî û pirsgirêka tenduristiyê ku di nav gel de tê dîtin, hewldaneke çareserkirinê jî hene. Çi bi rêbaza sêhr û nistiyan dibe; çi bi rêbaza bikaranîna kel û pelên xurekî, riwekî û sewalî dibe çi jî bi rêbaza serdana der û deverên pîroz dibe her gav lêgerînek heye. Li gorî pêwîstiyê, car caran çend rêbaz bi hev re têne bikaranîn. Gel, ji bo çareserkirina pirsgirêkên derûnî piranî serî li ziyaretan, gorên sahabeyan an jî "Qencên Xwedê" dide. Car caran bi şevan di wan avahiyên ku li derdora goran hatine çêkirin de dimînin û diayan dikin da ku bigihêjin tenduristiya xwe. Ji bo nasîn, parastin û berdewamiya vê çanda gelêrî, divê hemû kevneşopî û zanyariyên gel bi rêbazên zanistî werin tomarkirin û lêkolînên berfireh bêne kirin. Lê mixabin di vî warî de li herêma Semsûrê heta niha xebatên berfireh û bi rêk û pêk nehatine kirin. Bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê, tenê bûye mijara du sê heb xebatên bi sînor ên lîsansa bilind û çend gotaran.

Tê zanîn ku pêşketinên teknolojîk bandoreke zêde li ser guherîna civakê dikin. Di rewşeke weha de, çanda gelêrî û kevneşopiyên qedîm wekî berfa li ber rojê dihelin. Me hewl da ku em beşek ji vê çandê biparêzin. Yek ji mebesta vê xebatê ew e ku ji bo berdewamiya xebatên bi vî rengî hîmekî baş deyne erdê. Valahiyê li vê qadê hinekî dabigre. Vê çanda qedîm bi lêkolîn, nirxandin û berhevkariyeke bi rêk û pêk ji windabûnê xelas bike, bîne rojeva akademî û lêkolînerên vê qadê. Ji bo vê yekê navên nexweşînên li herêmê, rêbazên çareserkirinê, kesên ku pêkanînên bijîşkiya gelêrî dimeşînin û rewşa îro hatine tesbîtkirin.

## Rê û Rêbaza Xebatê

Hîmê vê xebatê li ser lêkolîna li qadê ye. Ew daneyên ku di encama lêkolîn, çavdêrî û hevpeyvînan de hatine berhevkirin bingeha xebatê saz dikin. Di warê lêkolînên folklorî de rêbaza herî kêrhatî ev e. Di vê rêbazê de berhevkar, hemû zanîn, cerebe û serhatiyên jêderan bi çavên xwe di qadê de dibîne û bi guhê xwe dibihîse. Digel agahiyên ku hatine dayîn rewşa û xwezaya jêder jî di cih de dibîne.[3] Di beşa yekemîn ya xebatê de ji xebatên nivîskî yên ku di vî warî de hatine kirin sûd hatiye wergirtin. Berî ku dest bi xebata qadê bê kirin berhemên nivîskî yên derbarê mijarê de hatine raçavkirin. Pirsên ku dê bêne pirsîn bi alîkariya xebatên ku berê hatine nivîsandin hatin hilbijartin. Hemû pirs li gorî mijaran hatin dabeşkirin û wekî pirsnameyekê hatin amadekirin. Di beşa pêşî ya pirsnameyê de agahiyên derbarê jêder de yên wekî nav, paşnav, sal, cihê jidayikbûnê, cihê ku niha lê dijî û hwd. hatin pirsîn. Beşa duyemîn ya pirsnameyê ji pirsên bijîşkiya gelêrî ya li gorî serdemên jiyanê (ew jî di nava xwe de sê binbeş in) pêk tê. Beşa sêyemîn ya pirsnameyê jî ji pirsên çanda ocaxîbûnê û nistiyên ku di ocaxan de li nexweşan têne kirin pêk tê. Roj û dema ku serdana jêderan dê bê kirin pêş de hate diyarkirin. Hevpeyvîn li gorî vê plansaziyê hatin kirin. Di pêvajoya xebata li qadê de rêbazên çavdêrî, hevpeyvîn û "gogberf"ê hatin bikaranîn.[4] Ango li ser agahî û saloxdanên kesê ku bi wî re hevpeyvîn hatiye kirin em çûne bal kesekî din. Lêbelê berî ku dest bi xebatê bê kirin -wekî ku li jor jî hate behskirin- pirtûk, gotar, tez û lêkolînên ku vî warî de weşiyane hatin xwendin û nirxandin. Helbet em nikarin nav û naveroka hemû berheman li vir bidin lê em dikarin bi kurtî behsa çend heban bikin:

Di warê lêkolînên folklorê de xebata Metin Ekici "(Folklor)

---

3 Kenneth S. Goldstein, *Sahada Folklor Derleme Yöntemleri*, Ahmet E. Uysal (Çev.), Kültür ve Turizm Bakanlığı Milli Folklor Araştırma Dairesi Yayınları, Ankara 1983, r. 72.

4 Metin Ekici, *Halk Bilgisi (Folklor) Derleme ve İnceleme Yöntemleri*, Geleneksel Yayıncılık, Ankara 2007, r. 23.

Derleme ve İnceleme Yöntemleri"[5] hêjayî qalkirinê ye. Di warê Kurdî de xebata bi navê "Ji Destpêkê Heta Niha Folklora Kurdî" ku ji aliyê mamosteyên beşa Kurdî ya Zanîngeha Mardîn Artukluyê ve hatiye amadekirin jî hêjayî pesindanê ye. Di xebata me ya li qadê de bi taybetî ji rêbazên ku di van xebatan de hatine şopandin sûd hatiye wergirtin.[6]

Berî ku xebatên qadê bêne destpêkirin, bi gelê herêmê re têkilî hate danîn û ji kesên ku dê karibin alîkariyê bidin me, alîkarî hate wergirtin. Plansaziya dema hevpeyvînan li gorî dem, şert û mercên kesê/a jêder hatin sererastkirin. Bi wan kesan re li gorî derfetan -heta ku ji dest hatiye- di hawirdora xwezayî de hevpeyvîn hatin kirin. Car caran li nav erdan, li hewşa malê, li ber loda pelên titûna qaçax û car caran jî li odeya mêvanan hevpeyvîn hatin kirin. Berî ku hevpeyvîn dest pê bike, ji wan kesan re mebesta xebatê hatiye vegotin û destûra wergirtina deng û kişandina wêneyên wan hatiye stendin. Pirsên ku hatine amadekirin hatine pirsîn û di cihên pêwîst de pirs li pirsan hatine zêdekirin. Bi vê rêbazên pêkanîn û nojdariyê hatin zelalkirin.[7] Di dema hevpeyvînan de heta ku ji dest hatiye çavdêrî hatiye kirin. Wekî tercîh, piranî bi kesên ku ji teknolojiyê dûr in û tecrûbeyên wan pir in re hevpeyvîn hatine kirin. Bi gelek kesên ku bi çandiniyê û sewalvaniyê ve mijûl in, derbarê riwekên sûdewer û rêbazên bikaranîna wan de danûsitendin hatin kirin.

Dema ku bi endamên ocaxan re hevpeyvîn hate plankirin -heta ku ji destê me hat- rojên dermankirinê (wekî êvara înê, çarşem, în) hatin hilbijartin. Lewra di bijîşkiya gelêrî ya Kurdî de herwekî nojdariyê dema nojdariyê jî girîng e.[8] Lê gelek caran, wê rojê nexweş nedihat wê malê û pêkanîneke rasteqîn pêk nedihat. Ji ber vê yekê di wan rojan de rewşeke çêkirî-şanoyî hate

5 Rêbazên Berhevkirin û Lêkolînên Folklorê

6 Kadri Yıldırım, Ramazan Pertev, Mustafa Aslan, *Ji Destpêkê Heta Niha Folklora Kurdî*, Weş. Zanîngeha Mardin Artuklu, Stenbol 2013.

7 Özkul Çobanoğlu, *Halkbilimi Kuramları ve Araştırma Yöntemleri Tarihine Giriş*, Akçağ Yayınları, 6. Baskı, Ankara 2012, r. 84-86.

8 Kadri Yıldırım, Ramazan Pertev, Mustafa Aslan, *Ji Destpêkê Heta Niha Folklora Kurdî*, r. 18.

amadekirin û bi temsîlî pratîkên bijîşkiyê hatin pêşkêşkirin. Bi destûra ocaxan ew pratîk hem bi deng hem jî bi wêne û dîtbarî hatin tomarkirin. Armanc ew bû ku rêbaz û rîtûela çareserkirina pirsgirêkê bi çav jî bê dîtin û hin tiştên ku di vegotina wan de hatiye jibîrkirin jî derkeve holê.

Gelek caran hevpeyvîn di nav civakê de hatiye kirin. Di vir de mebest ew bû ku hevpeyvîn di rewşeke xwezayî de pêk bê û peyv li peyvê zêde bibe. Bi pirs û mînakan bala civakê û kesê ku pisporê mijarê ye li ser mijarê hûr bibe.

Ji bilî hevpeyvînên bi çend pîrekan re, hemû hevpeyvîn bi amûra dengwergirtinê hatin tomarkirin. Piştre bi gelek kesên ku hevpeyvîn hatiye kirin re wêne jî hatin kişandin. Hin kesan, ji ber sedemên takekesî destûra kişandina wêneyan neda, me jî wêneyê wan kesan negirt. Ew dengên ku hatine tomarkirin li kompîturê hatin barkirin û yek bi yek hatin deşîfrekirin. Di dema deşîfreyê de derbarê kesê ku hevpeyvîn hatiye çêkirin de hin agahiyên wekî nav, paşnav (heger hebe nasnav/zirnav), temen, asta perwerdehiyê, cihê ku lê hatiye jiyanê, cihê ku niha lê dijî û jêdera ku bijîşkiya gelêrî jê hîn bûye hate nivîsandin. Lê ji ber hin xemên kesên jêder nav û paşnavê hin jêderan di vê xebatê de cih negirt. Navê wan jêderan li bal me heye lê bêyî destûra kesê jêder eşkerekirina nav û paşnavên wan ne li gorî pîvanên zanistî û exlaqî ye. Di dawiya xebatê de agahiyên derbarê kesên jêder de wekî lîste hatine rêzkirin. Di nav xebatê de, wekî têbiniyan rêza jêderan bi hejmaran hate diyarkirin. Her hejmar, jêderekê nîşan dide.

Di dema deşîfrekirina tomarên dengan de, ji ber pirsgirêkên devoka Kurmancî ya Semsûrê Kurmanciya standart hatiye tercîhkirin lewra gelek peyv û gotin nedihatin nivîsandin û fêmkirin. Digel vê yekê jî ji ber girîngiya mijarê navên giya, derman, cih û herêman wekî devoka xweser hatine nivîsandin. Hin cihên pêwîst raste rast wekî hatiye vegotin hatine nivîsandin. Di nav xebatê de jêgir di nav neynûkan de û bi puntoyên piçûk cih digrin. Di jêgiran de me dest neda vegotinan û çawa ji devê jêder derketiye me jî wisa nivîsand. Ji ber vê yekê dibe

ku hin rexneyên rêzimanî li xebatê bêne kirin. Ya girîng ew e ku ew metn, mînakên devoka Kurmancî ya herêma Semsûrê ne û îro jî gel bi vî awayî dipeyive. Mînak, li herêma Semsûrê kes nabêje, "Ka em li ser vê mijarê bipeyivin.", dibêjin "Were em li ser vê meselê deyn kinî." Yan jî "Were em li ser vê merselê çend şoran bikinî."

## Çarçove, Sînor û Pirsgirêkên Lêkolînê

Ji ber berfirehiya mijarê û erdnîgariya fireh ya Semsûrê çarçoveya xebatê bi navenda Semsûrê, gundên li ser navendê û çend gundên li ser Kolikê (Gexte) ve hatiye sînorkirin. Lêbelê divê bê zanîn ku ew kesên ku bi wan re hevpeyvîn hatin kirin ne tenê ji navenda Semsûrê ne. Ji bilî navenda Semsûrê 3 bajarok, 134 gund û 118 gundikên li ser navendê hene. Gelek ji wan, ji gund û navçeyên cihê ne lê niha li navenda Semsûrê dijîn. Her weha piraniya ji wan kesan pareke mezin a temenê xwe li gund û navçeyan derbas kirine lê îro ji ber sedemên cihê li navenda Semsûrê dijîn. Pêvajoya demî ya xebata qadê ji bihara 2016an heta dawiya havîna 2018an e. Ango ji du salan zêdetir ajot. Di vê demê de bi 164 kesan re hevpeyvîn hate çêkirin. Di navberê de li gorî pêdiviyê bi rêya telefonê jî hin agahî hatin tomarkirin. Nexweşîn û ocax hatin tesbîtkirin.

Di dema lêkolîn û xebata li qadê de hin pirsgirêk jî derketin pêşiya me. Pirsgirêka herî mezin ew bû ku me nekaribû bi hêsanî girîngiya mijarê û xebatê bi kesên jêder bidin fêmkirin. Gelek caran ew kesên ku dê hevpeyvîn bi wan re bihata kirin an ne li mal bûn, an jî li mal bûn lê karekî wan ê "girîngtir" derdiket. Zêdebûna temenê jêderan bi serê xwe pirsgirêkeke mezin bû. Gelek ji wan kesan êdî pîr bibûn, hişê wan li serê wan diçû û dihat. Lewra jî dubare dipeyivîn, carinan jî navê nexweşînan û dermanên wan têkil hev dikirin. Hin kes bi şik tevdigeriyan û qanihkirina wan gelekî dijwar dibû. Hin kesan nedixwest ku navên dermanên ku bi kar dianîn bibêjin. Karê ku wan kirine wekî tawanekê didîtin û digotin, "Lawo! Piştî van gotinan me nexin hepsê ha!" Zarokên hin pîrejin an jî kalemêran

nedixwestin ku em tilsima pêkanîn û nistiyên wan bizanibin. Wek mînak, ew diayên ku di vê pêvajoya dermankirinê digotin eşkere nedikirin. Bi guman nêzîkî me dibûn û dixwestin ku em wêne û dengê wan tomar nekin. Lêbelê kesên hişyar ku bi me re ji dil alîkarî dikirin jî gelek bûn. Ji van kesên ku hevpeyvîn bi wan re dihate kirin piraniya wan êdî pîr bibûn girêdayî vê yekê pirsgirêkên wan yên tenduristiyê hebûn. Piraniya dema hevpeyvînê bi guhdarkirina pirsgirêkên wan ên tenduristiyê derbas dibû.

## ÇARÇOVEYA TÊGEHÎN

Bijîşkiya gelêrî, wek têgeheke zanistî dibe ku mayînde be lê tecrûbe, rêbaz, zanîn û pêkanînên wê guherbar in. Bi demê re hin jê wenda dibin, hin dihugerin û hinên nû lê zêde dibin. Di vir de, teoriya Benfey ya bi navê "emanetgirtin" dikeve rojevê. Li gorî wî, folklor û binbeşên wê jî bi demê re ji çanda civakekê derbasî civakeke din dibin. Wek mînak, di pêvajoya seferên Skenderê Zûlqarneyn (Duquloç) ku di serdema Helenîstîk (B.Z. sedsala 2.) de pêk hatine de gelek çandên Rojhilat û Rojava gihaştine hevdu û bandor li ser hev kirine.[9]

Wekî ku Helman (1981) û Read (1966) jî behs kiriye "nexweşîn" rewşa patolojîk ya jîndaran e ku ji aliyê çandî û derûnî ve hatiye pejirandin yan nepejirandin. "Nerehetî" xerabûna tenduristiyê ye. Nexweşbûn, rewşa nerehetiyê ku ji aliyê çandî û civakî ve hatiye danasîn û destnîşankirin diyar dike.[10] Ew jî rêbaz/ên çareserkirinê diyar dike. Ango bi giştî gel, bi taybetî jî kesê nesax, nexweşînê çawa teşxîs û terîf bike çareserî jî li gorî wê diguhere. Heger ew hewldanên çareseriyê di nava gel de, bi awayekî xwezayî û bênivîs pêş bikevin rê li ber bijîşkiya gelêrî vedibe. Bijîşkiya gelêrî, xwe dispêre hînbûn, ceribandin, zanînên kevneşopî û pêkanînên gelêrî. Ji ber vê yekê kêm-zêde her endamê

9 Yuri M. Sokolov, *Folklor: Tarih ve Kuram*, Yerke Özer (Çev.), Geleneksel Yayıncılık, Ankara 2009, r. 74.

10 Melike Kaplan, *Geleneksel Tıbbın Yeniden Üretim Sürecinde Kadın*, Ankara Üniversitesi Rektörlüğü Yayınları, Ankara 2007, r. 31- 34.

civakê di vê mijarê de xwedî hin agahiyan e. An bûye kirdeyê pêkanînekê an jî bûye bireserê pêkanînekê. An bi xwe nexweş ketiye yan bûye şahidê dermankirina nexweşiyekê bi rêbaza bijîşkiya gelêrî yan jî bi xwe nesaxek derman kiriye. Hemû têkber, riwek û xurekên ku di bijîşkiya gelêrî de têne bikaranîn di encama ceribandinên civakê de derketine holê.

Dîroka nexweşiyan û lêgerînên li ser çareserkirina nexweşiyan bi qasî dîroka mirovahiyê kevnare ye. Çawa ku mirovan bîra nexweşînê û mirinê birine, li dijî vê yekê ketine nava hewldanan. Di berxwedana li dijî nexweşînan û mirinê de du bawerî û pêkanîn derketine pêş. Yek jê baweriya bi hêzên nepen bû. Li gorî baweriya mirovan, hin hêzên nepen dibûn sedema nexweşîn û mirinan. Lewra jî heger ew hêzên nepen ji mirovan aciz nebin, dibe ku xisarê jî nedin mirovan. Ji bo vê yekê jî divê mirovan hin "bertîl" bidana wan hêzên nepen. Ew jî serjêkirina sewalan û bexişandina hin xelat û diyariyên din ên ji bo "xwedayan" bû. Rêbaza din jî girêdayî bi naskirina xwezayê bikaranîna riwek, xurek û kanên din ên li xwezayê bû. Mirovan berê bi rêya tehmkirinê û bêhnkirinê riwek û xurek nas kirin. Yên ku kêrî wan hatin xwarin û vexwarin. Piştre hin ji wan di serdema nexweşiyan de wekî derman bi kar anîn. Bi vî rengî jî hîmê bijîşkiya gelêrî hate danîn.

Beşên jiyana mirovan yên fîzyolojîk wekî destpêka ducanîbûnê, serdema ducanîbûnê, zayîn, nahişînî (şikbirî, bîrbirî), navsereyiyê didome û bi mirinê jî temen bi dawî dibe. Di van serdeman de gelek ayîn û rê û resm têne bikaranîn. Pêkanînên bi vî rengî, di nav her civakê de kêm zêde hebûne û hîn jî hebûna xwe didomînin. Ew pêkanîn piranî bi hin zagon û kevneşopiyan ve girêdayî ne. Di gelek şaristaniyan de, pêşeng û berpirsyarên rê û resmên kevneşopî jin in. Wek mînak, jin di serdema ducanîbûnê de neçare ku tevî mêrê xwe li gorî hin zagonan tevbigere. Beriya zayînê û piştî zayînê ji bo ku bêyomiyan dûrî xwe bigrin, ji bandora sêhra xirab dûr bimînin jin û mêr neçar in ku ayînên paqijkirinê, navlêkirinê pêk bînin.

## Wek Têgeh Bijîşkiya Gelêrî û Bawerî

Bijîşkiya gelêrî ne tişteki misoger û mayînde ye. Zanîn û pêkanînên derbarê vê mijarê de bi demê re dibe ku biguherin, hin jê wenda bibin û hin jî werin dewsa yên ku wenda bûne. Lêbelê rastî ew e ku ji dîrokên kevin heta niha bi awayên cihê li gorî çand, civak, hawirdor û hwd. bijîşkiya gelêrî xwe ji nû ve afirandiye û mirovan jî her dem serî li rêbazên bijîşkiya gelêrî daye.

Frazer, di berhema xwe ya bi nav û deng "Şaxa Zêrîn" de pêşniyarekê dide ber xwendevanên xwe yên hemdem û xwedî çand. Frazer dibêje ku *"Pêkanînên gelên kevin û paşdemayî ew tişt in ku mirov karibe fêm bike. Bi ser de, li gorî fêm* û hişmendiya wan kesan ne tiştên dûrî aqil in. Gelek tiştên ku em dikarin ji wan hîn bibin hene. Heger lêkolîn li ser wan werin kirin dê di mijara *fêmkirina civaka me de rêya me ronî bikin."* Bijîşkiya gelêrî, di bin sîwana folklorê de wekî binbeşekê tê hesibandin. Digel ku hîn wekî zanisteke bi serê xwe nayê pejirandin jî ji ber aliyê xwe yê menewî, çandî, civakî û tenduristî bi gelek zanistên wek tib, antropolojî, civaknasî, psîkolojî û edebiyatê re têkildar e.[11]

Mirov dikare ji bo bijîşkiya gelêrî gelek pênaseyan bide. Lewra, pênase û navlêkirina wê li gorî civakan diguhere. Car caran rêbazeke dermankirina nexweşiyekê bi herêmekê ve sînordar dimîne ango ew rêbaz tenê li qadeke teng tê bikaranîn. Car caran jî ew herêm mezin dibe, dibe welatek û wekî bijîşkiya gelêrî ya wî welatî tê binavkirin. Bijîşkiya gelêrî ya Çînê mînaka vê yekê ye. Bijîşkiya gelêrî bi devkî ji nifşekî derbasî nifşê din dibe û carinan jî wekî pisporiya malbatekê tê dîtin. Wê gavê wekî bijîşkiya li malê tê pejirandin.

Bijîşkiya gelêrî, piranî wekî binbeşeke folklorê tê pejirandin. Digel ku wekî zanisteke serbixwe tê pejirandin, ji ber aliyên wê yên menewî, çandî, civakî û tenduristî bi zanistên wekî tib, antropolojî, civaknasî, wêje û derûnnasiyê re jî têkildar e.[12]

---

11 James G. Frazer, *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, Mehmet H. Doğan (Çev.), Payel Yayınevi, 2. Basım, İstanbul 2004, r. 7.

12 Dan Ben Amos, "Folkloru Tanımlamak", Dilara Koçbaş (Çev.), *Dans Müzik Kültür Folklora Doğru Çeviri Araştırma Dergisi*, 2002; r. 1-18.

Bîjîşkiya gelêrî, ji aliyê rêxistina Saziya Tenduristî ya Cîhanê ve wekî *"Hemû pergalên dermankirina gelêrî, diyarkirin, dermankirin ango parastina tenduristiyê ya bi riwek, sewal û kanan, zanîn û baweriyên derbarê çareserkirina nexweşiyan de, pêkanînên derûnî û hemû pêkanînên bi destan."* tê pênasekirin.[13] Li gorî zanyarê folklorê yê bi nav û deng Yoder, ji hemû pêkanîn û rêbazên ku gel ji bo danasîn û çareserkirina nexweşiyan dîtine re *"bijîşkiya gelêrî"* tê gotin. Hemû nojdariyên ku bi rêbaza bikaranîna riwek û kanên xwezayî têne kirin, dibe ku wekî *"bijîşkiya gelêrî ya xwezayî"*; nojdariyên ku pala xwe didin rêbazên derasayî, mucîzewî û hêzên nepen jî dibe wekî *"bijîşkiya gelêrî ya olî-sêhrî"* were penasekirin.[14] Li gorî folklornasê Tirk Boratav, bijîşkiya gelêrî yan ji bêderfetiyê yan jî li ser daxwaza nexwestina çûyîna bijîşkên nûjen ya mirovan derketiye holê.[15] Tevî bawerî, zanîn û ceribandinên hezar salan, îro jî pêkanînên bijîşkiya gelêrî berdewam dikin. Li gorî rêxistina Saziya Tenduristî ya Cîhanê, li dinyayê bi gelemperî ji sedî 80yê kesan rêbazên dermankirinê yên ku xwe dispêrin riwekan bi kar tînin; ew rêje li parzemîna Afrîqayê ji sedî 95ê mirovan e.[16]

Hîmê bijîşkiya gelêrî li ser ol ango bawerî û xwezayê ye.[17] Li gorî Platon, divê ku di dermankirinê de rih û laş bi hev re bêne raçavkirin. Lewra nexweşê ku bi dermanan, nistiyan, kes û cihên pîroz bawer bike dê zûtir baş bibe. Wekî ku ji vê pênaseyê jî tê fêmkirin bijîşkiya gelêrî qadeke gelekî berfireh e. Li her devera ku nexweşîn lê hebe, bijîşkiya gelêrî jî bi awayekî heye.[18]

---

13 World Healt Organization, Traditional Medicine 2008, www.who.int/mediacentre/factsheets/fs134/en (17.05.2018)

14 Şirin Yılmaz, "Ulupamir Köyünde Halk İnançları ve Halk Hekimliği Uygulamaları", *Milli Folklor*, 2016; 28 (109), r. 187-200.

15 Pertev Naili Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*. Gerçek Yayınevi, İstanbul 1994, r. 122.

16 Ergün Kahveci, Murat Yeşilkaya, Salih Malkoçoğlu, "Orta Karadeniz Bölgesindeki Tıbbi ve Aromatik Bitki İşletmelerinin Yapısal Analizi", *Gaziosmanpaşa Bilimsel Araştırma Dergisi (GBAD)*, 2018;7 (1). r. 55-68.

17 Sedat Uğurlu, "Traditional Folk Medicine in The Turkish Folk Culture", *Cumhuriyet Üniversitesi Türkoloji Dergisi*, 2011;6 (4), r. 317-327.

18 Tuba Saltık Özkan, "Geleneksel Tıpta İyileşmenin İnanç Boyutu Üzerine

Bijîşkiya gelêrî li ser du şaxan dimeşe. Yek ji wan çand û tecrûbe ye; ya din jî bawerî ye. Ji bo ku pêkanînên bijîşkiya gelêrî baştir werin fêmkirin divê çanda civakê û baweriyên civakê ji nêzîk ve bên naskirin. Divê hîmên ku ew bawerî li ser ava bûne bi awayekî bi rêk û pêk werin diyarkirin. Divê mirov gotegot, biwêj û gotinên pêşiyan yên ku gel bi kar tîne binase û di kîjan wateyê de (rastî-mecazî) hatiye bikaranîn jî zanibe. Lewra hin ji van gotinan olî dixin bîra mirov lê di eslê wan de tu têkiliya wan baweriyan û olê bi hev re tuneye. Mînakên vê rewşê di nav civaka Îslamê de jî gelek in.[19] Dema tê xwestin ku mijarek, ramanek an jî nêrînek bi civakê were pejirandin -digel ku tu têkiliya wan gotinan bi Îslam û Quranê nîne- tê gotin ku "Ew tişt di ola Îslamê, Quranê de yan di hedîsan de jî derbas dibe." Ji bo qanihkirina civakê bi zanetî ew şêwaz tê bikaranîn. Ew kesên nedurist bi vî rengî rêya bertek, rexne û şîroveyan dixitimînin. Wisa dikin ku gel bê şert û şûrt ji her gotinê bawer bike. Ji aliyê din ve dibe ku hin ji van gotinan rast bin jî. Lewra tê zanîn ku, di gelek pirtûkên ku derbarê serdema Hz. Mihemed û pêkanînên wî de hatine nivîsîn de mijarên bijîşkiya gelêrî jî cih digrin. El-Cewziyye, di pirtûka xwe ya bi navê Tibb-i Nebewî de behsa pêkanînên Hz. Mihemed yên di mijara bijîşkiya gelêrî de dike. Wek mînak, di mijara pêvedana maran de van rîwayet û hedîsan parve dike:

> "Pêxemberê me (silavên Xwedê li ser wî bin), tifa xwe di serê tiliya xwe ya şehadetê dida. Piştre ew tiliya xwe ya şil di axê dida û wekî ku heriyê biseyîne birîn bi wê heriyê diseyand. Di wê demê de ev dia dixwend: 'Bi navê Xwedê şifayê hêvî dikim, dawiya vî karî ji Xwedê re dihêlim û baweriya xwe bi wî tînim.' Bi vî rengî dermanê madî û yê menewî dikir yek. Car caran jî weha digot: 'Bi navê Xwedê (şifayê dixwazim), ev

---

Kuramsal Yaklaşımlar: Psikosomatik Tıp, Plasebo Etkisi ve Kuantum İyileşme", *Millî Folklor*, 2012; 24 (95), r. 307-314.

19 Hayreddin Kızıl, *Diyarbakır ve Çevresindeki Dini Anlayışta Mitolojik Unsurların Etkisi*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Ankara Üniversitesi SBE Felsefe ve Din Bilimleri (Dinler Tarihi) Anabilim Dalı, Ankara 2010, r. 178-179.

tifa ji me hinekan e û ev jî axa welatê me ye. Bi destûra Rebbê min nexweşê me dê baştir bibe."[20]

Helbet nêrîna her oleke gerdûnî ya derbarê dinya û axretê, sinc û dadweriyê û cihê mirovan de heye. Ev hemû di nav xwe de yekbûnekê û lihevhatinekê saz dikin. Ji bo ku çandek di bin bandora çandeke din de bimîne û heyînên (eleman) wê çandê bike malê xwe, divê teqez berî vê pejirandinê, di nav çanda xwe ya berê de serpêhatiyên nêzîkî wê mijarê pêk hatibin.[21] Ango divê gel ne xerîbê wî tiştê nû be. Wate ew e ku çand, tiştên nêzîkî yê xwe zûtirîn dihebîne. Wek mînak, mirov dikare rê û resmê qurbanê bide. Di hemû olên yekxwedayî de qurban hene. Lêbelê ji xeynî van her çar olân jî di gelek ol û baweriyên kevin de qurban têne dayîn. Wek mînak, di şaristaniyên kevin ên wekî Mezopotamya, Anadol, Hind, Çîn, Misir, Îranê de hin heyv û demsalan de kevneşopiya qurbandayînê ango wedandinê hebûne. Hin ji wan qurbanan zindî û xwînî ne û hin jî jê diyariyên wekî xurek û kanên zêr, zîv û hwd. in.[22] Di wedandina qurbanan de zayend jî girîng e: Di çanda Romaya kevin de, qurbanên nêr ji xwedawendên mêr; qurbanên mê jî ji bo xwedawendên jin têne pêşkêşkirin.[23]

Carinan jî mirov, wek qurbanekê hatine pêşkêşkirin: Hz. Îbrahîm, kurê xwe (Hz. Îsmaîl) wekî qurbanekê ji Xwedê re pêşkêş kiriye. Herweha tê zanîn ku ew kevneşopiya misilmanan a dayîna qurbanan, di nav Erebên "serdema cahiliyeyê" de -bi awayên cuda- hebûye.[24]

Hin pêkanînên ku îro di nav civaka Kurdan de hene, ji baweriya agirperestiyê- piştre jî Êzdiyatiyê- mane. Têkilî û hevşibîna di navbera bawerî û kevneşopiyên Elewiyên Dêrsimê û

---

20 İbn Kayyim el Cevziyye, *Tıbb-ı Nebevi, Peygamber Efendimizin Sağlık Öğütleri*, Yusuf Ertuğrul (Çev.), Hikmet Yayınları, İstanbul 2004, r. 239-240.

21 Turgut Akpınar, *Türk Tarihinde İslamiyet*, İletişim Yayınları, İstanbul 1994, r. 69.

22 Selahaddin Bekki, "Türk Mitolojisi'nde Kurban", *Akademik Araştırmalar*, 1996;1 (3), r. 16-28.

23 Hakan Olgun, "İbadet, Ritüel ve Kurban", *Milel ve Nihal*, 2016;13 (2), r. 82-99.

24 Ali Bardakoğlu, "Kurban", *Türkiye Diyanet Vakfı İslam Ansiklopedisi*, TDV Yay., İstanbul 2002, C. 26, r. 433-435.

baweriyên agirperestiyê û hin baweriyên kevintirîn vê yekê piştrast dikin: Efsaneya Munzir Baba û çem û kaniya Munzirê; vêxistina findan ya li ber perestgehên xwezayî yên wekî Kaniya Fatma Ana; pîroziya pezkûviyan û hwd. mînakên vê yekê ne.[25] Em dizanin ku beşeke girîng ji civaka Kurdan demeke dirêj di bandora baweriyên prîmîtîv (kevnare) de jiyaye. Ew bandor îro di nav hin kevneşopiyên bijîşkiya gelêrî de tê dîtin. Wek mînak, li herêma Semsûrê di serdema zêristaniya jinan de, ji bo ku jin xwe û zarokê xwe ji cinan biparêzin, her gav derziyê bi xwe re digerînin. Das, kêr û hwd. tiştekî hesinî datînin ber serê xwe. Heman kevneşopî di nav çanda Êzdiyatiyê de jî heye. Di çanda Êzdiyan de jî heta sê rojan amûreke hesinî li ber serê wan jinan dimîne. Heta çil rojê zarok neqede, her ku jinên zêristanî avê vedixwin derziyekê yan şûjinekê dixin nav wê avê.[26]

## Bawerî

Bi wateya xwe ya ferhengî bawerî, girêdana kesekî/ê ya ji dil a bi tiştekî ve ye. Ew yek bi xwe re pêşqebûlekê jî tîne. Çi ji aliyê ol û siyasetê ve be, çi ji aliyê sinc û pêkanînan ve be mirov bê nîqaş li pey wê ramanê diçe. Nîqaş tuneye. Lêbelê ji aliyê din ve ew bawerî li gorî civak, herêm, kom û nêrînan diguhere. Wekî zanista gelî (folklor) bawerî, bi mijara pêkanîn, kevneşopî û baweriyên ku ji olên civakê yên kevin re mijûl dibe. Ew mijûlî, bi şêweya şîrovekirina ol û baweriyên îroyîn pêk tê.[27]

Li gorî lêkolînên ku li ser baweriyên gel hatine kirin, li ser rûyê erdê ji 190î zêdetir cureyên baweriyên gel hene. Hîmê hin ji van baweriyan digihêje ol û mîtolojiyên kevin. Li gorî baweriya van civakên kevin, hemû tişt û hebûnên di xwezayê de xwediyê rih in û ew rih jî her zindî ye. Dinya bi rihan û hêzên van rihan ên veşarî dagirtî ye. Ew hêz û rih dinyayê bi rê ve dibin. Dibe

25 Dilşa Deniz, *Yol/ Re: Dersim İnanç Sembolizmi*, İletişim Yayınları, İstanbul 2012, r. 54.
26 Kemal Tolan, *Nasandina Kevneşopên Êzdiyatîyê*, Pêrî Yayınları, İstanbul 2006, r. 226.
27 Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*, r. 7.

ku ew hêz û rih di darekê de, di kevirekî de, di behrekê de yan di sewalekî de veşartî bin. Karê sêrbaz/remildar birêvebirina van hêzan a li gorî mebest û pêdiviyên mirovan e. Ji bo vê yekê jî sêrbaz/remildar hin dermanên bisêhr (efsûnî) amade dike. Sêrbaz/remildar, ew dermanê bisêhr ku amade kiriye digel hin dia, ayîn û rê û resman, bi wan hêzên nepen re dikeve têkiliyê û vê hêz û qabiliyeta xwe ji bo berjewendiyên mirovan bi kar tîne.[28] Jixwe îro jî piraniya baweriyan bi rêya nistî û sêhran hebûna xwe didomînin.

Peyva nistî ku li herêma Semsûrê pir tê bikaranîn, bi serê xwe bandoreke nepen -qet nebe nîv nepen- li ser mirovan dike. Bi taybetî di nav mirovên berê (prîmîtîv/îlkel) de rêzgirtina li hember hêzên nepen, hêviya derbarê mucîzeyan de û hesreta jiyaneke xweş destnîşan dide. Ev yek, baweriya mirovan ya bi pêkanîn û derfetên derasayî di nav xwe de dihebîne. Lewra, tenê hêzên nepen dikarin aramiyê bînin yan jî bobelatan bînin serê mirovan. Gel, wisa bawer dike ku bidestxistina tiştên weha ne bi rê û rêbazên xwezayî, lê tenê bi alîkariya van hêzên nepen dibe pêk bê. Ji bo vê yekê jî pêwîstî bi nistiyan heye. Li gorî baweriya van kesan, tenê nistî dikarin mirovan ji zirara hêzên nepen biparêzin.[29] Bi pêşketinên zanistî û asta têgihîştina hişmendiya mirovan re sînorên bandora hêzên nepen jî teng dibin. Ev yek di mijara bijîşkiya gelêrî de jî bi vî rengî ye. Her ku nifşên nû digihêjin baweriya bi bijîşkiya gelêrî û baweriyên girêdayî mijarê jî kêm dibe. Piranî kesên nexwende, pîr û navsere baweriyên bi vî rengî dihebînin. Di asta bawerkirina bi hêzên nepen de rewşa kar, aborî, xwendin û perwerdehiya mirovan bi bandor e. Wek mînak, girêdana gel ya bi baweriyên pûç (batil) li gundan û çeperên bajaran li gorî navendan zêdetir e. Piranî kesên wisa -yên nezan, xizan û bêçare- serî li nivişţan, helandina qurşûnan û pifkeran didin.[30]

---

28 B. Malinowski, *Büyü, Bilim ve Din*, Saadet Özkal (Çev.), Kabalcı Yayınları, İstanbul 1990. r. 59.

29 Sedat Veyis Örnek, *100 Soruda İlkellerde Din, Büyü, Sanat, Efsane*, Gaerçek Yayınevi, İstanbul 1971, r.135.

30 Mahmut Tezcan, *Kültür ve Kişilik (Psikoloji-Antropoloji)*, Bilim Kitap Kır-

## Li Dinyayê Xebatên Bijîşkiya Gelêrî

Bijîşkiya gelêrî hemtayê mirovahiyê ye. Li gorî folklornas Yoder, tib bi xwe ji hekîmtiyê kevintir e. Tiba gelêrî nêrîn, raman û baweriyên derbarê van nexweşînan de jî di nav de, hemû rê, rêbaz û pêkanînên derbarê nojdariya nexweşînan de di nava xwe de dihebîne.[31] Ji vî aliyî ve bijîşkiya gelêrî beşek ji çanda gel e. Yoder, tiba gelêrî wekî *"tiba xwezayî ya gel"* û *"dermanên gel ên olî û sêhrî"* dabeş dike. Di tiba xwezayî de derman ji riwek û kanên ku di xwezayê de hene têne çêkirin. Dermanên olî û sêhrî jî hemû rêbazên çareserkirina nexweşiyan in ku ji ol û sêhran sûdê werdigrin. Ji ber van taybetiyan, mirov dikare bibêje ku bijîşkiya gelêrî beşek ji çanda gelêrî ye.

Pergalên baweriyê, di nav sazkirina nêrîna civakê de roleke girîng hildidin ser milên xwe. Rêbazên bijîşkiya gelêrî jî di nav vê pergalê de ji nifşekî derbasî nifşê din dibin. Her ku nifş derbas dibin cerebe û zanînên gel jî zêde dibin. Di mijara çanda gelêrî de nêrîna civakê û nêrîna tiba nûjen gelekî ji hev cihê ye. Herweha rêbazên çareserkirina nexweşiyan û pêkanînên wan jî ji hev gelekî dûr in.

Di nav civakê de kêm zêde her kes di demeke jiyana xwe de bi bijîşkiya gelêrî re rû bi rû dimîne. Lewra her kes di vê mijarê de xwediyê hin raman û tecrûbeyan e. Di bijîşkiya gelêrî de hîmê zanîn, hînbûn, cerebe û pêkanînan li ser zanista adetî ye. Hemû tiştên ku bi mebesta dermankirinê têne bikaranîn bi rêya ceribandinên civakî têne nasîn û berhevkirin. Jin, di nav pêvajoya bijîşkiya gelêrî de her li pêş in. Tecrûbeya wan ji ya mêran zêdetir e. Piraniya tecrûbeyên xwe ji dayik, xaltî, pîrik, met, xwesî, der û cîranên xwe wergirtine. Ew jî diyar dike ku jin di pêvajoya meşandina bijîşkiya gelêrî de xwedî roleke girîng in. Jin, zanînên xwe bi rêya kevneşopiyan hîn dibin, ne li dibistanan yan ji pirtûkên zanistî. Ew yek jî rê li ber baweriyên batil vedike. Li gorî Rivers, di hîmê bijîşkiya gelêrî de sêhr û baweriyên batil

tasiye, Ankara 1987, r. 136.

31 Don Yoder, "Halk Tıbbı", *Folklora Doğru Dergisi*, Sibel Yoğurtçuoğlu, Ayfer Gülüm (Çev.), 1975; 43, r. 25-27.

hene. Ji ber vê yekê mirov nikare xeteke xuyayî di nav tib, sêhr û olê re bikişîne û van ji hev biqetîne. Her çiqas ku di nav bijîşkiya gelêrî de wekî tiba nûjen -li gorî pîvanên zanistî- "pisporî" tunebe jî gel di nav xwe de li gorî zanîn, bawerî û tecrûbeyên xwe dabeşkirinek kiriye.[32] Saziya "ocaxan" mînaka vê dabeşkirinê ye. Wek mînak, di nav gel de, ji bo nexweşiya zerikê gel serî li endamên "ocaxa zerikê" dide. Li gorî baweriya gel, vê nexweşiyê tenê ew ocaxa dikare derman bike.

Çanda bijîşkiya gelêrî li welatên wekî Çîn, Tîbet, Kore, Japonya, Hindistan û Afrîqayê gelekî pêşketî ye. Tê zanîn ku li Çînê dîroka xebatên li ser bijîşkiya gelêrî digihêje beriya Îsa sedsala 8an. Ew tê wê wateyê ku beriya vê dîrokê jî pêkanînên bijîşkiya gelêrî di nav gelê Çînê de hebûn. Jixwe îro jî şopên bijîşkiya gelêrî ya prîmîtîv di nav gelê Çînê de wekî kevneşopî didomin. Vexwarina ava hin riwekan, paldana li ber tavê ya li devereke hênik, xwe seyandina bi heriyê tenê çend mînak in. Li gorî felsefeya bijîşkiya gelêrî ya Çînê tenduristî, hevsengiya "Yîng" û "Yang"ê ye. "Yîng" erd, sarî û jinê temsîl dike ku ew jî bandora xwe li ser tevgera mirovan, hesin, agir, av, ax û depê dikin. "Yang" jî asîmanan, germahiyê û mêraniyê temsîl dike. Di bijîşkiya gelêrî ya Çînê de dermanên ji riwekan, cureyên baharatan, pêkanînên bi destan, rê û rêbazên bêhnvedanê, derzî (akupunktur), parêz hwd. gelek rêbaz têne bikaranîn.[33]

Bijîşkiya gelêrî ne tenê li Çînê, li deverên din ên dinyayê jî didome. Xebateke ku di sala 2006an de li başûrê Okyanûsa Mezin li girava Solomonê hatiye kirin, diyar dike ku gelê herêmê di rûdanên pirsgirêkên tenduristiyê yên mezin de serî li tiba nûjen didin lê di pirsgirêkên rojane û hêsan de hîn jî serî li bijîşkiya gelêrî dide.[34] Li Meksîkayê piraniya gel rêbazên bijîşkiya gelêrî

---

32 William H. R. Rivers, *Tıp, Büyü ve Din*, İ. Enis Köksaldı (Çev.), Epsilon Yayınları, İstanbul 2004, r.11.

33 [illegible] Arslan, Bilge Sözen Şahane, Sevgi Şar, "Dünya'daki Geleneksel Tedavi [illegible] Örnekler: Genel Bir Bakış", *Lokman Hekim Dergisi*, 2016; [illegible]

34 [illegible] "The Rules of Western Biomedicine and Folk Medicine [illegible] Islands: A Quantitative Analysis of Villagers'Response to

bi kar tîne. Hekîmên bi navê "Yerbero" dermanan amade dikin. Her weha yerbero, bi rêbazên hingavtin û destwerdanên wekî mistdan, palikandin, kişandin û hwd. nojdariya nexweşînan dikin.[35]

Di civakên kevintirîn (prîmîtîv) de bawerî hîn li pêş e. Li gorî wan civakan her tişt bi rih e. Rihê hin tiştan xerabiyê belav dike, yê hin tiştan jî qenciyê. Tenê kesên ku bi van hêzên nepen re dikarin bikevin têkiliyê –sêhrbaz/remildar û hwd.- dikarin mirovan ji nexweşiyan û xerabiyan biparêzin.[36] Tenê sêhrbaz/remildar, dikarin hin dermanên bisêhr amade bikin. Di wan deman de, şehînşah di heman demê de keşe, sêhrbaz/remildar û bijîşk e. Lêbelê piştî hin ceribandinan û encamên nebaş -ku ji aliyê nexweşan ve nedihatin hêvîkirin- şehînşah, sêhrbaz û bijîşk ango hekîm ji hev diqetin. Her yek bi rêya xwe ve diçe. Di berhemên kevin û nivîskî yên çanda Tirkan de şopên bijîşkiya modern û şopên sêhr û baweriyan tevlihev dibin. Di nav çanda bijîşkiya gelêrî ya Rojhilata Navîn de bawerî û bikaranîna riwekan ya li nexweşiyan cihekî girîng digre. Mînak, di bijîşkiya gelêrî ya herêma Kirmanşahê -ku di nav sînorê Îranê de ye- îro jî ji bo dermankirina nexweşiyan bi sedan giha têne bikaranîn.

Wekî zanistekê dîroka xebatên bijîşkiya gelêrî ne zêde kevin e. Berî sedsala 20an li hin welatan, hin kesan bala xwe daye ser vê mijarê û hin berhevok amade kirine. Zanyarê Îngîliz Thomas Browne hîn di sala 1646an de bi navê "Lêkolîna Derbarê Baweriyên Gelêrî yên Pûç de" berhemek nivîsandiye.[37] Di vê qadê de xebata William Halse Rivers a bi navê "Tib, Sêhr û Ol" (1924) -ku ji notên ku dersan pêk tê- berhemeke girîng e. Rivers, di vê berhemê de li ser nêrîn û baweriyên tiba kevnare hûr dibe. Antropolog Pritchard, di navbera salên 1926an û 1930î de li ser civaka Azande -ku li ber qeraxa Çemê Nîlê yê Afrîqayê dijîn- lêkolînên berfireh kirine û piştî van lêkolînan termînolojiya sêhr

---

Ilness", *Tropical Medicine and Health*, Vol. 34. No: 2, 2006, r. 101.

35 National Center for Farmworker Health, inc. (NCFH), *Folk Medicine and Traditional Healing*, Australia 2011, p.1-4.

36 Frazer, *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, r. 10.

37 Yıldırım, Pertev, Aslan, *Ji Destpêkê Heta Niha Folklora Kurdî*, r. 18.

û nistiyan (1937) amade kiriye.[38]

Di sala 1973an de li Amerîkayê bi pêşengiya Wayland Hand di qada bijîşkiya gelêrî de konferansa UCLA hatiye lidarxistin. Piştre, di sala 1979an de bi pêşengiya Enstitûya Smithsonian *"Sempozyûma Bijîşkiya Gelêrî: Rêbazên Alternatîf ên Nojdariyê"* hatiye lidarxistin.[39]

Di warê xebatên bijîşkiya gelêrî de, li gorî Kurdî, xebatên Tirkî bêtir bi rêk û pêk in. Xebatên bijîşkiya gelêrî berê wekî binbeşek ji folklorê di nav xebatên folklorî de cih girtine. Ev xebat bi giştî wekî berhevkirina keresteyên folklorî hatine kirin. Li Tirkiyeyê pêşengên vî karî Pertev Naili Boratav û Fuat Köprülü ne. Van nivîskar, lêkolîner û berhevkaran derbarê folklora Tirkan de xebatên hêja kirine.[40] Lêbelê hîn beriya wan jî hin berhem hatine amadekirin. Di nav rûpelên "Edviye-yi Müfrede", "Müntehâb-ı Şifa", "Divan-ı Lügat-it Türk" û "Tabiatnâme" ku bi Tirkiya Kevin û Tirkiya Navendî hatine nivîsandin de em gelek agahiyên li ser bijîşkiya gelêrî jî dibînin.[41] Di sedasa XIVan û pêve gelek xebatên têkildarî bijîşkiya gelêrî hatine amadekirin. Gelek ji wan wekî wergerên berhemên ji Erebî û Farisî ne lê xebatên xweser jî hene. Wekî Tuhfe-î "Mubarîzî" ya Hekîm Bereket (sedsala XIVan), "Hulasa-î Tıbb" ya Cerrah Mesûd (sedsala XVan) û hwd.[42]

Tê zanîn ku di sedsala XXan de li Tirkiyeyê gelek xebatên folklorî hatine meşandin. Di vê qadê de kovara pêşî ku li ser folklorê weşiyaye "Halk Bilgisi Mecmuası" ye. Her weha di kovara "Türk Halk Bilgisi Haberleri" -ku di sala 1927an de dest bi

---

[illegible] Melike Kaplan, "Halk Tıbbının Kökenleri: Teşhisten Tedaviye Din ve Büyü [illegible]", *Millî Folklor*, 2011;23(91), r. 150-156.

[illegible] David Hufford, "Halk Hekimleri", Mustafa Sever (Çev.), *Millî Folklor*, 2007;19 [illegible]

[illegible] bê zanîn ku van kesan gelek keresteyên çanda Kurdan û [illegible] jî wekî hilberînên çanda Tirkan nîşan dane.

[illegible] Yaylagül, "*Anadolu'da Yaşayan Halk Hekimliği Uygulamalarının Eski [illegible] Tıp Metinlerindeki Temelleri*", Millî Folklor, 2014, Y. 26, r. 103, [illegible]

[illegible] XIV XV. Yüzyıl Türkçe Tıp Metinlerinde Halk Hekimliği [illegible] 2011;23 (89), r. 125.

weşanê kiriye- de 45 nivîsên li ser bijîşkiya gelêrî û baweriyên gel hatine weşandin.[43] Di qada xebatên folklorî de navê Pertev Naili Boratav û Fuat Köprülü derdikeve pêş. Tê zanîn ku Boratav, 91 sal emrê xwe di rêya folklorê de derbas kiriye. Her weha Yaşar Kalafat, yek ji pisporên folklora Tirkan e. Pirtûka wî ya bi "100 Soruda Türk Folkloru"[44] wekî çavkaniyeke sereke ya lêkolînên folklorî tê hesibandin.[45] Kalafat, li ser bijîşkiya gelêrî jî gelek xebat meşandine. Pirtûka wî ya bi navê "Doğu Anadolu'da Eski Türk İnançlarının İzleri"[46] rewşa pêkanînên ku di serdemên jiyanê yên wekî zayîn, zewac û berî mirinê têne meşandin dinirxîne û dide ser şop û rêça bawerî û pêkanînên berê yên Tirkan.[47] Di warê xebatên folklorî ku li Tirkiyeyê hatine meşandin de kovarên folklorê cihekî girîng digrin. Di vî warî de gelek kovar hatine weşandin lê belê kovara herî demdirêj ku di vê qadê de weşiyaye û hîn jî weşana xwe didomîne kovara "Folklora Doğru" ye. Folklora Doğru, di sala 1969an de di bin banê Koleja Robertê de ji aliyê xwendekarên Türk Folklor Kulübü (Komeleya Folklora Tirkan) ve hatiye weşandin. Piştre ji aliyê Boğaziçi Folklor Kulübü (Komeleya Folklorê ya Zanîngeha Boğaziçi) ve weşana wê hatiye domandin.[48] Digel ku car caran navber hatibe dayîn jî kovar hîn diweşe. Lê weşana xwe îro li ser înternetê, bi awayekî dîjîtal didomîne. Herî dawî hejmara 71ê di Reşemiya (Sibat) 2017an de hatiye weşandin.[49]

Her weha kovara "Mîllî Folklor" ji sala 1989an û vir ve xe-

43 Songül Çek, *"1913-1938 Yılları Arası Türk Halkbilimi Tarihçesi"*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Hacettepe Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halkbilimi Bilim Dalı, Ankara, 2002. r. 55-65.

44 Di 100 Pirsî de Folklora Tirkan.

45 Pertev Naili Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*. Gerçek Yayınevi, İstanbul 1994.

46 Li Rojhilata Anadolê Şopên Baweriyên Kevin ên Tirkan

47 Yaşar Kalafat, *Doğu Anadolu'da Eski Türk İnançlarının İzleri*, Ebabil Yayınları, İstanbul 2006.

48 Gül Atmaca, "Folklora Doğru Dergisi (1969-2011)", *Atatürk Üniversitesi Sosyal Bilimler Dergisi*, 2013; 51, r. 295-301.

49 http: www.bufk.boun.edu.tr, ?page_id=14 (15.08.2018).

batên folklorî bi awayekî zanistî dimeşîne. Ev kovar di çend salên dawî de bi awayekî dîjîtal jî li ser malpera xwe ya înternetê diweşe. Heta niha 119 hejmar hatine weşandin. Piraniya van hejmaran niha li ser malpera înternetê jî hatine weşandin.[50]

Heta niha di qada zanistî de gelek civînên zanistî yên wekî kongre û sempozyûmên neteweyî û navneteweyî li ser bijîşkiya gelêrî ya li Tirkiye hatine lidarxistin. Di van kongre û sempozyûman de bi sedan gotar û danezan hatine pêşkêşkirin.[51] Li zanîngehên Tirkiyeyê, li ser mijara bijîşkiya gelêrî û baweriyên gel xebatên master û doktorayê hatine meşandin û ev xebat di zanîngehên cihê de hîn jî didomin. Pêşengiya lêkolînên bijîşkiya gelêrî zanîngehan kiriye û hîn jî dikin. Bi taybetî zanîngehên li Enqere, Stenbol û Îzmirê di bin beşên Ziman û Edebiyata Tirkî de binbeşên "folklor" ango "halk bilimi" hatine vekirin û di bin banê van beşan xebatên gelekî hêja hatine amadekirin. Wek mînak tenê li zanîngeha Hacettepeyê di navbera salên 1982 û 1994an de 245 tezên masterê û doktorayê hatine amadekirin.[52] Gelek ji van tezan di mijara bijîşkiya gelêrî de ne û wekî berhevkirin, dabeşkirin û nirxandin hatine amadekirin. Di malpera lêgerîna tezan a Saziya Perwerdehiya Bilind a Tirkiyeyê de 19 tezên bi vê mijarê ve rasterast girêdayî xuya dikin. Ji vana xebatên doktorayê yên Mustafa Sever[53], Münire Baysan[54] û Fatma Ateş[55] gelekî girîng in. Di warê ocaxên şifayê yên Anadolê de jî

50 http:www.millifolklor.com, hakkimizda (15.08.2018).

51 *Türk Halk Hekimliği Sempozyumu Bildiriler, 23-25 Kasım 1988*, Kültür Bakanlığı Yayınları, Ankara 1989.

52 Sevengül Karasubaşı, "Hacettepe Üniversitesi Türk Dili ve Edebiyatı Bölümü ve Türk Halk Bilimi Anabilim Dalı'nda Hazırlanan Tezler Bibliyografyası", *Milli Folklor*, 1995; r. 26, r. 87-94.

53 Mustafa Sever, "*Mersin ve Yakın Çevresi Halk İnançları ve Halk Hekimliği*", (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Hacettepe Üniversitesi SBE, Ankara 2001.

54 Münire Baysan, *Kütahya ve Yakın çevresinde Halk Hekimliği ile Ocak Kültü*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Uludağ Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Bursa 2016.

55 Fatma Ateş, *[illegible] Halk Hekimliğinde Ocak Kültü*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), [illegible] SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Bilimi Dalı, Ankara 2015.

xebatên girîng hatine meşandin. Bi taybetî gotara Sami Kılıç[56] û ya Tuba Saltık Özkan[57] ji bo têgihîştina xebatên li ser bijîşkiya gelêrî lêkolînên berfireh in.

Di warê bijîşkiya gelêrî û baweriyên girêdayî vê mijarê de hin xebat li herêma Semsûrê jî hatine meşandin. Lêbelê ev xebat bêtir wekî binbeşên xebatên din ên qadê hatine kirin. Nuran Çetin, di xebata xwe ya lîsansa bilind de cih daye êrik û ziyaretgehên pîroz yên derdora Semsûrê û ev mijara ji aliyê dîroka olan ve nirxandiye.[58] Mümine Kalındemirtaş, di warê bandora bijîşkiya gelêrî ya li ser gel de xebateke civaknasiyê meşandiye. Di vê xebatê de dîroka bijîşkiya gelêrî nirxandiye. Bi hin kesên ku hekîmtiyê didomînin re anket çêkiriye. Lêbelê ew xebat jî di qadeke gelekî teng de hatiye meşandin. Xebat, tenê bi gundê Ören yê bi ser navçeya Bêsniyê ve bi sînor e. Li gorî encama vê xebatê, kesên ku xwendina wan kêm e bêtir serî li êrik û ziyaretan didin û ji bo çareserkirina pirsgirêkên xwe yên tenduristiyê serî li dermanên ku ji riwekan hatine çêkirin didin.[59]

## Di Nav Kurdan de Xebatên Bijîşkiya Gelêrî

Berî pêşketina derfetên tiba nûjen û gel, li Kurdistanê dema ku yek nexweş diket an jî birîndar dibû, di nav gel de hin kesan berpirsyariya dermankirina wan nexweşî û birînan hildida ser milên xwe. Ji wan kesan re li gorî herêman *"bijîşk"*, *"hekîm"*, *"hekîmê loqman"*, *"hekimê Kurmancî"*[60], *"tebîbê Kurmancî"* dihate

56 Sami Kılıç, "Halk Hekimliği, Sağaltma Ocakları ile İlgili İnanışlar", *Halk İnanışları El Kitabı*, (r. 310-327), Grafiker Yayınları, Ankara 2017.

57 Tuba Saltık Özkan, "Folklorun Yüz Yılında Halk Hekimliği Çalışmalarına Bir Bakış", *Millî Folklor*, 2013; 25
(99), r. 137-144.

58 Nuran Çetin, *Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi*, Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Selçuk Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Felsefe ve Din Bilimleri Anabilim Dalı Dinler Tarihi Bilim Dalı, Konya 2007.

59 Kalındemirtaş, *"Geleneksel Tıbbın Halk Üzerindeki Etkisi (Adıyaman İli Ören Köyü Örneği)"*, r.17-18.

60 Ehmed Nafiz, "Quncika Bijîşqî", *Hawar*, 1932; 2, r. 3-4. Amadekar û Wergêr: Mihemed Bekir, Sweden 1987.

digotin. Ji pêkanîn û dermanên ku wan bi kar dianîn re jî dîsa li gorî herêman *"nistî"*, *"dermanên Kurmancî"* an jî *"dermanên Kurdewarî"* tê gotin. Piraniya wan dermanên Kurmancî, ji giyayên çolê yên wekî talî, tolik, karî, gûriz, hîro, gûlik, pelhewêz, tirşok, meyremxurt û hwd. dihatin çêkirin.[61] Lêbelê dermanên ku ji kanên wekî xwê, şeb, avşor (soda); dermanên ku ji sewalên wekî mar, kevjal, masî, kosî û hwd. dihate çêkirin jî hebûn û hê jî hene. Gelek caran jî di rewşên weha de mela û zanayên Kurdan pêşengî ji civakê re kirine û ji bo dermankirina nexweşiyan hin berhem nivîsandine.

Mirovên ku tirsiyane, nexweş ketine yan birîndar bûne her dem ji xwe re li çareseriyan geriyane. Carinan wekî sedema nexweşînan "xwedayên" xwe, carinan rihên xerab (hêzên nepen), carinan jî kes û rawirên derdora xwe dîtine. Car caran jî kiryarên xwe yên "nebaş" wekî sedema nexweşiyan pejirandine û ew êşên ku dikişînin jî wekî cezayê xwe hesibandine. Sedem çi dibe bila bibe, mirovan li dijî nexweşiyan dev ji hewldanên xwe bernedane; hertim li çareseriyan geriyane. Di vê lêgerînê de du rêbaz derdikevin pêş. Yek jê rêbaza bikaranîna dermanên xwezayî ye, ya din jî serîlêdana bawerî, ol û sêhr yan nistiya ye. Gelek caran, her du rêbaz bi hev re hatine bikaranîn.

Di bijîşkiya gelêrî ya Kurdan de gelek rêbazên dermankirina nexweşiyan hene. Ev rêbaz li gorî nexweşî, temen, ocax, cih, herêm û kesan diguhere. Mistdan, palikandin, firkandin, girêdan, kewandin, pêwerkirin, nistî, birîn û dermankirin rêbazên sereke ne. Derman, piranî ji giyayan, sewalan û hin cureyên kanan têne çêkirin.

Her wekî deverên din ên dinyayê, li Mezopotamaya û Kurdistanê bikaranîna riwekan ya di bijîşkiya gelêrî de rêbazeke gelek kevin e. Lêkolînên şûnwarnasiyê (arkeolojî) jî vê daneyê [illegible] didin. Di lêkolînên Şikefta Şanîder -ku li Herêma Federal [illegible] Kurdistanê ye- de derketiye holê ku beriya 50 hezar salî riwek [illegible] Di nav gorên Neanderthal de bermahiyên

[illegible] Hekîmê Kurmancî, Dermanê Kurmancî", http:krd. [illegible]

riwekan hatine dîtin. Her weha li ser kevalên Pirtûkxaneya Nînovayê, reçeteyên nojdariya nexweşînan ku ji aliyê keşeyan ve hatine amadekirin hene. Ji van kevalan tê fêmkirin ku riwekên wekî nane, pung, rîzang, cahtirî (zahter) û hwd. hîn di wê demê de bi mebesta nojdariyê hatine bikaranîn.[62]

Di serdema Selçûqî û Osmaniyan de jî li ser folklor û bijîşkiya gelêrî ya Kurdî hin xebat hatine meşandin. Ev xebat, bi taybetî ne li ser mijarekê ne. Bêtir li ser çand û folklora Kurdî ne. Lê mixabin, piraniya van xebatan bi zimanê Erebî û Farisî hatine nivîsîn. Hîn di sala sedsala IXan de alimê Kurd, Ebû Henîfe Ehmed Dawud el Dînewerî pirtûkeke bi navê "Kîtab el-Nebat" ku ji şeş cildan pêk tê amade kiriye. Di vê pirtûkê de derbarê riwek, erdnîgariya Kurdistanê û dabeşkirina riwekan de gelek agahiyên girîng hene.[63]

Di nav Kurdan de bi qasî ku em dizanin, xebata yekemîn ku mijara wê rasterast diyarkirina nexweşiyan û dermankirina wan e mecmûaya Melayê Erwasî ye. Melayê Erwasî, di sedsala 18an de li herêma Serhedê jiyaye. Erwasî, di vê pirtûkçeya xwe de navê nexweşiyan rêz dike, sedemên wan diyar dike û bi qasî zanîn û lêkolînên xwe li ser rêbaza dermankirina nexweşiyan çend gotinan dibêje. Ew pirtûkçe, bi salan di nav mela û alimên Kurdan de wekî destxetan hatiye zêdekirin û belavkirin. Ronakbîr, nivîskar û weşangerê Kurd yê bi nav û deng Celadet Alî Bedirxan jî di nav rûpelên kovara Hawarê de behsa vê pirtûkçeyê dike.[64] M. Reşîd Irgat di sala 2000an de ev berhem wergerandiye tîpên latînî û çap kiriye. Irgat dibêje ku, "Min ev berhem ji destnivîsa Mela Evdilsemedê Xorosî ku di sala 1948an de nivîsiye û ji destnivîsa Mela Hesenê Ovanisî ku di sala 1949an de nivîsiye wergirtiye."[65] Herî dawî ev pirtûkçe ji aliyê Prof. Dr.

---

62 Yusuf Zeynalov, İlaç Bitkiler, Tarihi Gelişim ve Kullanımları, ND-Aden Yayıncılık, İstanbul 2008, r. 6-7.

63 Mehrard R. Izady, *Kürtler- Bir El Kitabı*, Cemal Atilla (Çev.), 3. Baskı, Doz Yayınları, İstanbul 2011, r. 99-100. Her weha tê zanîn ku Dînewerî, "Ensab el-Ekrad (Binyada Nijada Kurdan)" jî di nav de gelek berhemên din jî nivîsandine.

64 Celadet Ali Bedirxan, *Hawar*, Mihemed Bekir (Amadekar), Sweden 1987.

65 Calînosê Hekîm, Mela Mihemed Qûtup, *Dermanên Bijîşkiya Gelêrî*, M. Reşîd

Kadri Yıldırım ve ji ber destxeta ku Mela Zeynel Abîdîn Amedî ku wî jî ji destxeteke din wergirtiye tevî dahûrîn, wergera Tirkî, latînîzekirina ji tîpên Erebî û wek destxeta ku jê sûd wergirtiye, di sala 2014an de hatiye amadekirin. Ev xebat, ji aliyê Weşanên Zanîngeha Mardîn Artukluyê ve hatiye çapkirin.[66]

Dema ku em tên sedsala XIXan mela û rewşenbîrekî gelekî jîr derdikeve qada nivîsandina folklora Kurdî. Ew nav, bêguman Mela Mehmûdê Bayezîdî (1797-1867) ye. Bayezîdî, bi handana (teşwîq) sefîrê Rûsan ê Erziromê Aleksander Jaba (1801-1894), derbarê Kurdan de gelek pirtûk nivîsandine û radestî Jaba kirine. Yek ji van berheman "Adat û Rusûmatnameê Ekradiye" (Edet û Kevneşopiyên Kurdan) ye. Di vê berhemê de derbarê bawerî û bijîşkiya gelêrî ya Kurdan de gelek agahî hene. Li gorî vê berhemê tê fêmkirin ku di nav jiyana rojane ya Kurdan de baweriyên batil (pûç) ciheki gelekî girîng digrin.[67] Jaba, 84 destxetên ku derbarê Kurdan de berhevkirine birine radestî akademiya Zanistan ya Rûsyayê kirine. Bi xêra vê keda Jaba, gelek berhemên girîng û dîrokî gihaştina roja îro.[68]

Di serê sedsala XXan de rojhilatnasê bi nav û deng Î. A. Orbelî (1887-1961) li herêma Wanê û Miksê xebatan dimeşîne û dîtin û ramanên xwe yên derbarê gelê herêmê de bi navê *"Li Miksê Folklor û Jiyana Rojane"* di pirtûkekê de berhev dike.[69]

Rewşenbîr û weşangerê Kurd Celadet Elî Bedirxan di kovara Hawarê (1932-1943) de cih daye nivîsên derbarê bawerî û bijîşkiya gelêrî û tenduristiya gel.[70] Bi taybetî bijîşkê hêja Ehmed

---

Irgat (Wergera ji tîpên Erebî), Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2000, r. 7.

66 Kadri Yıldırım, *Ji Sedsala 18. Pirtûkeke Kurdî Ya Bijîşkiya Gelêrî Tiba Melayê Erwasî*, Weşanên Zanîngeha Mardin Artuklu, Mêrdîn 2014.

67 Mela Mehmûdê Bayezîdî, *Adat û Rusûmatnameê Ekradiye*, Jan Dost (amd.), Weşanên Nûbihar, Çapa 2., Stenbol 2012.

68 Burcu Özdemir, Ayna Askeroğlu Arslan, "Rusya'nın Kürdoloji Çalışmaları (1787-1947)", İnsan ve İnsan, 2018: 5 (17), r. 199.

69 Î.A. Orbeli, *Li Muksê Jiyan û Folklora Rojane*, Weş. Nûbîhar, Stenbol 2011.

70 *Hawar 1 (1-23), Hawar 2 (24-57)*, Fırat Cewerî (Amadekar), Weşanên Nûdem, Stockholm 1998.

Nafîz, girîngî daye hişyarkirina gel ya derbarê nexweşînên vegir yê wê serdemê de û zanînên şaş yên nav gel diyar kirine û li dewsa wan pêwîstî û agahiyên rast di qûncikê xwe de nivîsiye.[71]

Pirtûka ku ji aliyê Xalidê Hekkarî ve bi navê *"Ji Dermanxaneya Siruştê Zerzewatên Şîfadar"*, hatiye amadekirin, digel ku xebatake ne zêde berfireh e, ji ber ku bi Kurdî hatiye nivîsandin; nav û sûdeweriya riwekan bi Kurdî (bi zaravayê Kurmancî) hatiye nivîsîn xebateke hêja ye.[72] Her weha di salên dawî de li ser bijîşkiyê û nojdariyê gelek pirtûkên Kurdî weşiya ne. Pirtûka ku ji aliyê Odeya Tebîban ya Diyarbekirê ve bi navê *"Kürtçe Anamnez-Anamneza Kurmancî"* û *"Zanistiya Tenduristiya Gel"* tenê du mînak in.

Di Kurdên Îranê û Rojhilatê Kurdistanê de jî bijîşkiya gelêrî jîndar e. Tenê li herêma Kirmanşanê bi sedan cure giya di amadekirina dermanên Kurmancî/Kurdewarî de têne bikaranîn.[73] Yek ji xebatên girîng ku rasterast li ser bijîşkiya gelêrî ya Kurdî ye, ji aliyê Sadiq Sefîzade Borekayî ve hatiye amadekirin û di sala 1982an de li Tehranê çap bûye.[74]

Piştî avabûna Herêma Federal a Kurdistanê xebatên folklorî jî pêş ketine. Kovara *"Asoyî Folklorî Kurd"* xebatên hêja weşandine.[75] Di sala 2015an de li bajê Koyê, «*Govara Kulturî Kurd*" dest bi weşanê kiriye.[76] Buwar Nureddîn, bi navê *"Bîbliyografiyayî Kitêbî Folklorî Kurdî* (1860-2004)", hemû berhemên derbarê folklora Kurdan de tasnîf kirine. Di rûpela 60î ya vê xebatê de pirtûkên

---

71 Ehmed Nafîz, "Quncika Bijîşqî", *Hawar*, 1932; 2, r. 3-4. Mihemed Bekir (Amadekar û Wergêr), Sweden 1987.

72 Xalidê Hekkarî, *Ji Dermanxaneya Siruştê Zerzewatên Şîfadar*, Weşanên Nûbihar, Stenbol 2012.

73 Mustafa Nimeti Peykani, Nesteren Celiliyan, "Giyahan-ı Daruyi-yi Ostan-ı Kirmanşah", *Taksonomi ve Biyosistematik*, Tabistan 1391, Sal 4, Şimare 11, r. 69-78.

74 Sadiq Sefîzade Borekayî, *Tib Der Miyanê Kordha*, Çapxaneya Ataî, Tehran 1982. Veg. Kadri Yıldırım, Ramazan Pertev, Mustafa Aslan, *Ji Destpêkê Heta Niha Folklora Kurdî.*
Digel hemû hewldanên me, me nikaribû vê berhemê bi dest bixin.

75 *Asoy Folklorî Kurd*, Wezaretî Roşinbîrî Kurdistan, Hewlêr/Iraq, 2006.

76 *Kovara Kulturî Kurd*, Zanîngeha Koy, Koy/Iraq, 2018.

derbarê bijîşkiya gelêrî de di bin binbeşa "Dermansazî" de rêz kirine. Li jêr ji van pirtûkan tenê 10 heb wekî nimûne tevî kunyeya wan hatine dayîn:

*Ferhengî Kiştûkal 1*, Merûf Qeredaxî Merdoxî, Korî Zanyarî Kurd, Bexdat 1972, 198 rûpel.

*Ferhengî Kiştûkal 2*, Merûf Qeredaxî Merdoxî, Korî Zanyarî Kurd, Bexdat 1974.

*Dermangeri Kurdî*, Hîwa Omer Ehmed, Dezgey Roşenbîrî Belawkirdnewey Kurdî, Bexdat, 1985, 57 rûpel.

*Giya û Derman*, Sadullah Hisên Bamernî, Emîndaretî Roşenbîrî û Lawanî Navçey Kurdistan, 1985, 65 rûpel.

*Gijûgiya û Ajal*, Mîrza Siddiq Ehmed Çînganî, Silêmanî, 215 rûpel.

*Gencîneyî Daristan Goda û Derman*, Mîrza Siddiq Ehmed Çînganî, Silêmanî, 1999, 190 rûpel.

*Riwek û Pzîşkayetî Millî Kurdî*, Kemal Celal Xerîb, Çapxaneyî Serdem, 280 rûpel.

*Ferheng, Gihan Darûyî (Kurdî*-Îngilîzî-Farisî-Erebî), Emîn Emînî, Întîşaratî Tabqistan, Kirmanşan, 284 rûpel.

*Gêtî Zîndewer*, Eladîn Secadî, Çapxaney Aras, Hewlêr, 223 rûpel.

*Pzîşk û Dermanxaneyî Sirûştî*, Mela Îbrahîm Kurdistanî, Întîşaratî Ustad Mutaharî, Qum, 2003, 126 rûpel.[77]

Li Tirkiyeyê ji dawiya salên 1990î û pêve weşanên Kurdî pêş ketine û di nav van weşanan de bijîşkiya gelêrî ya Kurdî jî -di bin banê xebatên zargotinî de- kêm be jî cihê xwe girtiye. Di hejmara dawî ya kovara Zendê de Şemoyê Memo, bi navê *"Sembol û Hebandina Avê di Zargotina Kurdî* de" gotareke hêja nivîsandiye.[78] Bi piştgiriya Şaredariya Mezin a Bajarê Amedê, kovara *Folklora Kurdan* wekî 8 hejmar weşiya. Di hejmara yekemîn de Mustafa Gazî bi navê *"Baweriyên Batil"* xebateke berhevkariyê weşan-

---

77 Buwar Nureddîn, *Bîbliyografiyayî Kitêbî Folklorî Kurdî (1860-2004)*, Enstitûtî Kelepûrî Kurdî, Çapxaneya Şivan, Silêmanî 2004.

78 Şemoyê Memo, "Sembol û Hebandina Avê di Zargotina Kurdî de", *Zend*, 2018: r. 26.

diye.[79] Di hejmara 7emîn ya heman kovarê de Bahoz Baran, li ser baweriyên gel nivîsek amade kiriye.[80]

Di sala 2006an de Mustafa Qazî û Ehmed Bengîn bi navê "*Baweriyên Batil ên Kurdan*" xebateke hêja weşandin.[81] Xalidê Hekkarî di sala 2012an de b navê "*Ji Dermanxaneya Siruştê* Zerzewatên Şîfadar" berhema xwe weşand.[82] Abdil Wehab Hajî Mahmoud, di sala 2013an de bi navê "*Zanistîya Tenduristîya Gel*" berhemek weşandiye. Di vê berhemê de nexweşîn, teşxîs û nojdariya wan bi Kurdî hatiye şîrovekirin.[83]

Ehmed Direhî (Kasimoglu) bi navê "*Ferhenga Navên Nebatan A Kurdî*" (Kürtçe Bitki Adları Sözlüğü), hemû floraya Kurdistanê daye ber xwe û navên riwekan Kurdî-Kurdî; Kurdî-Latînî-Tirkî û Latînî-Kurdî-Tirkî berhemeke gelekî hêja amade kiriye.[84] Lêkolîner û akademîsyenê Semsûrî Mehmet Fırat, "*Ferhenga Navên Riwekan Bi Kurdî* (Kürtçe Bitki Adları Sözlüğü)" amade kiriye. Di dawiya vê berhemê de cih daye wêneyên gelek riwekan.[85]

---

79 Mustafa Gazî, "Baweriyên Batil", *Folklora Kurdan*, 2015; 1(1): r. 55-56.

80 Bahoz Baran, "Baweriyên Gel", *Folklora Kurdan*, 2016; 7: r. 69-70.

81 Mustafa Gazi, Ahmed Bengin, *Baweriyên Batil ên Kurdan*, Weşanên Do, Stenbol 2006.

82 Xalidê Hekkarî, *Ji Dermanxaneya Siruştê Zerzewatên Şîfadar*, Nûbihar Yayınları, İstanbul 2012.

83 Abdil Wehab Hajî Mahmoud, *Zanistîya Tenduristîya Gel*, Weşanên Zanîngeh, Mêrdîn 2013.

84 Ahmet Kasımoğlu, *Ferhenga Navên Nebatan a Kurdî/Kürtçe Bitki Adları Sözlüğü*, Weşanên Enstitûya Zimanên Zindî ya Mardin Artuklu, Stenbol 2013.

85 Mehmet Fırat, *Ferhenga Navên Riwekan Bi Kurdî (Kürtçe Bitki Adları Sözlüğü)*, Weş. Sîtav, Van 2013.

## DERBARÊ SEMSÛRÊ DE HIN AHAGIYÊN GIŞTÎ

### Nav û Dîroka Semsûrê

Semsûr, bi navê xwe yê fermî Adıyaman, xwediyê dîrokeke gelekî kevnare ye. Mirov dikare bibêje ku warê yek ji şaristaniyên herî kevin yên dîrokê ye.[86] Li gorî lêkolînên ku li Şikefta Palaniyê, Şikefta Heyderan, Zag û Gûmûşkayayê hatine kirin, dîroka bajêr digihêje 40 hezar sal beriya Zayîna Îsa. Her weha li gorî lêkolînên ku li herêma Şehremuz ya Semsatê hatine kirin, li vê herêmê bermahiyên serdema Paleolîtîk (B.Z. 7000), Neolîtîk (B.Z. 5000), Kalkolîtîk (B.Z. 3000) û Tunc (B.Z. 300-1200) hatine dîtin.[87] Li herêma Kolikê li gundê Encûzê (Eskîtaş) nivîsên mîxî ku li ser kevirên hêlanên goran ku ji serdema Hîtîtiyan mane hatine dîtin.[88] Piştî Hîtîtiyan bi dorê Hurrî, Mîtannî, Kummuh, Medî, Asurî, Persî, Kommagene, Roma, Bîzans, Emewî, Ebbasî, Selçûqî û Osmaniyan desthilatdarî li ser axa Semsûrê meşandine.[89] Di nav wan desthilatdariyan de, ji aliyê şaristaniyê ve desthilatiya herî bi bandor ya Kommagenê ye.

Berî zayîna Îsa, di sala 334an de Mîrê bi nav û deng yê Makedonî Îskenderê Mezin –Di nav Kurdan de wekî "Skenderê Zûlqarneyn (Skenderê Duqiloç)" tê nasîn- erdnîgariya Anadolê ji serî heta binî dagir dike û hîmên şaristaniya xwe ya mezin li her devera bajêr datîne. Malbata Selevkos yê Makedonî desthilatiya xwe li wir diajo, heta sedsala yekemîn ya berî zayînê. Di sala 69an yê berî zayînê de Mîr Mîthradetes Kallînîkosê yekemîn serxwebûna xwe eşkere dike û serdema Kommagene dide destpêkirin. Wekî navenda desthilatiya Kommagene jî Samosata (Samsat) tê diyarkirin. Desthilatiya Kommagene heta sala 72an ya piştî zayînê didome. Piştî wê desthilatiya Romayê dest pê dike.

86 Yusuf Halaçoğlu, "Adıyaman", *Türkiye Diyanet Vakfı İslam Ansiklopedisi*, TDV Yayınları, İstanbul 1988, C. 1, r. 377.

87 *Yurt Ansiklopedisi*, Anadolu Yayıncılık, İstanbul 1981; C. 1, r. 191.

88 http: www.adiyaman.gov.tr (03.07. 2018).

89 Seydi Vakkas Toprak, *Hısnımansur*, Adıyaman Üniversitesi Yayınları, Adıyaman 2018.

Piştî perçebûna Romayê, Semsûr di nav axa Romaya Rojhilat de dimîne.[90]

Di sala 643yan de destwerdana hêzên Îslamê dest pê dike. Di sala 670yan de herêm bi giştî dikeve bin desthilatiya dewleta misilman a Emewiyan. Piştre di sala 758an de dewleta Ebbasî li herêmê dibe desthilatdar heta ku di 958an de Bîzansî ji nû ve herêmê dixin bin destê xwe. Piştî êrîşa Xaçperestan a yekemîn (1096-1098) herêma Semsûrê dikeve bin desthilatiya xaçperestan û Kontê Rihayê (Urfa) yê xaçperest. Jocelîn li Semsûr, Kolik (Gexte) û Aldûşê (Gerger) serweriya xwe eşkere dike. Di sala 1144an de Atabegê Misûlê Mustafa Nureddîn Zengî, Jocelîn têk dibe, wî dîl digre û dawî li desthilatiya Kontiya Rihayê ya Xaçperestan tîne. Ji sala 1150 û pê ve Semsûr dikeve bin destê Kara Aslanê mîrê Xarpêtê yê Artuqî û bi vî rengî li herêmê careke din dawî li desthilatiya xaçperestan tê.[91]

Li herêma Bêhisniyê jî şûnwarên xaçperestan hîn li dar in. Di salnameya Mamuratûl Azîz ya 1894-1895an de behsa 3 dêrên ku li navenda Bêhisniyê ne tê kirin. Her weha li gundên Ören, Karaağaç, Xirabe û Kêysûnê jî bermahiyên dêrên xaçperestan hatine dîtin. Di navbera salên 1204an heta 1298an, Dewleta Selçûqî ya Anadolê li herêmê desthilatiya xwe li dar dixe. Di sala 1393yan de Tîmûrlengê padîşahê Moxolan, herêma Semsûrê jî wekî herêmên din tarûmar dike. Piştre di sala 1516an de padîşahê Osmaniyan Yavuz Sultan Selîm herêmê dixe bin destê xwe.[92]

---

90 Emine Gökgedik, *239 Numaralı Adıyaman Kadı Sicili (H.1329–1333, M. 1911-1915) 1-105. Sayfalarının Transkripsiyon ve Değerlendirilmesi*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Kahramanmaraş Sütçü İmam Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Tarih Anabilim Dalı, Kahramanmaraş, 2011, r. 13.

91 Ömer Faruk Gökdeniz, *262 Numaralı Hısn-I Mansûr (Adıyaman) Kadı Sicilinin Transkripsiyonu ve Değerlendirilmesi*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Kahramanmaraş Sütçü İmam Üniversitesi, Sosyal Bilimler Enstitüsü, Tarih Anabilim Dalı, Kahramanmaraş, 2006, r. 24.

92 Seydi Vakkas Toprak, *Hısnımansur*, r. 36.

## Ol û Bawerî

Li Semsûrê, ji destpêka dîrokê heta niha mirovên ku ji nijad û baweriyên cihê ne bi hev re jiyane. Li Semsûrê gelên wek Ermen, Kurd, Tirk, Asurî, Sûryanî û Ereb di nav hev de jiyane. Ji van nijadan Ermen, Asûrî û Sûryanî xaçperest in. Yên din misilman in. Xaçpereset jî di nav xwe de li gorî mezheban dabeş bûne. Hin ji wanan di nav demê de mezheba xwe jî guherandine. Îro jî hin ji perestgehên van civakan li dar in.

Li Semsûrê civaka misilman wekî du mezheban (Elewî û Sunnî) bi hev re dijîn. Li gorî hin tasnîf û lêkolînên ku li ser Elewiyan hatine kirin rêjeya Elewiyên Semsûrê ji sedî 11 ye. Ew jî piraniya wan li nav Semsûrê û gundên li ser navendê dijîn. Li 54 gund, gundik û bajarokên li ser Semsûrê, li 9 gund û gundikên Bêsniyê, li 5 gund û gundikên Cêlika (Çelikhan), li 2 gundên Kolikê û li gundekî Tutê peyrewên mezhebê Elewîtiyê dijîn. Her weha li 63 gundan hemû niştecih Elewî ne. Li 15 gundan jî Elewî û Sunnî bi hev re dijîn.[93] Ev dewlemendiya çandî di defterên *"Sîcîlên Şerriye"* ku di dema Osmaniyan de hatine nivîsandin jî xuya dike. Wekî tê zanîn, Sîcîlên Şerriye ew defter in ku ji aliyê dadgehên Osmaniyan ve ji bo tomarkirina dozên ku hatine ber destê dadgeran (qazî) hatine nivîsandin. Li gorî van defteran mirov dikare derbarê bûyerên jiyana yên wê demê de gelek agahiyan bi dest bixe. Wek mînak, li gorî deftera sîcîlên şerriye ya bi hejmara 262an ku li herêma Semsûrê hatiye amadekirin (H. 1316-1317; M. 1899-1900), piraniya gelê Semsûrê misilman e. Ji 128 belgeyên vê defterê tenê 15 heb derbarê xeyrîmûslîman de ne. Ji van 15an 12 heb derbarê Ermeniyan de, 3 heb jî derbarê Sûryaniyên Semsûrê de ne. Her weha 2 belge derbarê Çerkezan de, 2 heb jî derbarê Erebên Semsûrê de ne.[94]

Di navbera 1875-1877an de serjimara giştî ya Semsûrê 4748

---

93 Fevzi Rençber, *Adıyaman'da Alevilik*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), İstanbul Üniversitesi Sosyal Bilimler Ensitüsü Temel İslam Bilimleri Anabilim Dalı İslam Mezhepleri Tarihi Bilim Dalı, İstanbul 2012, r. 215.

94 Gökdeniz, *262 Numaralı Hısn-I Mansûr (Adıyaman) Kadı Sicilinin Transkripsiyonu ve Değerlendirilmesi*, 2006, r. 32.

e. Ji van, 3185 kes misilman; 1563 jî nemisilman in. Li gorî van daneyan mirov dikare bibêje ku ji çar paran yek ji gelê Semsûrê nemisilman bûye.[95] Mixabin ji ber sedemên cuda hejmar û rengîniya civakên li Semsûrê roj bi roj kêmtir bûye û îro kêm kesên ji baweriyên cuda li nav bajêr û gundên wê dijîn.

## Avhewa, Erdnîgarî û Çandinî

Semsûr, wekî erdnîgarî û avhewa (îklîm) di navbera herêma Behra Spî, Rojhilat û Başûr Rojhilatê Anadolê de ye. Hîn taybetiyên erdnîgarî û avhewaya herêma Behra Spî di nava xwe de dihebîne. Lî başûr û rojavayê Semsûrê zivistan nerm derbas dibe. Berf kêm e û baran zêde ye. Havînan germ û rewa (nem) zêde ye. Li rojhilat û bakurê Semsûrê çiyayên bilind û asê seranser dirêj dibin. Lewra li van çiyayan zivistan çetin û dijwar derbas dibin. Gelek berf li serê çiyayan dikeve ser hev. Berê kêm caran û li kêm cihan be jî berfa zivistanê dima heta zivistaneke din. Bihar, havîn û payîz jî li gorî aliyê deştê hênik derbas dibin.[96] Li çiyayan ji ber serma, barana zêde û berfa ku di demsalên bihar û havînan de dihele çiya rût û tazî mane. Li qûntarên çiya dar û daristanên ne li hev hene. Ji ber ku havînan germ zêde dibe û baran jî kêm dibe darên ku demeke dirêj dîkarin bê av bimînin (darên berûyan, benîştok, benav, guvîj, sitrî û hwd.) zêde ne. Di nav daristanan de giyayên kin ku havînan hişk dibin hene. Dara sîndanê (cureyekî dara berûyan e) ne tê de hemû daristan bi darên pel pahn nixumandî ye û payîzan pelên xwe dîweşînin. Herêm, ji aliyê cureyên riwekan ve dewlemend e.[97]

Gelê li herêma çiya debara xwe bi xwedîkirina sewalan, birîna daran û çandiniya titûnê dike. Hin kes jî karê xwedîkirina mêşhingûvan dikin. Li aliyê başûr û başûr rojhilatê Semsûrê deşt

95 Said Öztürk, "Osmanlı Döneminde Adıyaman'ın Sosyal ve Ekonomik Özellikleri", *Medeniyetler Kavşağı Adıyaman Sempozyumu (8-10 Eylül 2006)*, İstanbul, Adıyamanlılar Vakfı Yayınları, 2008, r. 125.

96 http:www.adiyaman.gov.tr, iklim (10.10.201

97 Merve Kevser Furkan, *Adıyaman İlinde Yetişen Bazı Bitkilerin Etnobotanik Özellikleri*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Adıyaman Üniversitesi Fen Bilimleri Enstitüsü Biyoloji Anabilim Dalı, Adıyaman 2016, r. 29.

û newal hene. Bendava Ataturkê, li aliyê başûr, başûr rojhilat û rojavayê Semsûrê wekî xelekekê dizivire. Berî ku bendava Ataturkê çêbibe deşt û newalên gelekî fireh hebûn. Gel zeviyên xwe diajotin. Piranî bejî bûn. Genim, ceh, nîsk û nok diajotin. Piştî çêkirina bendavê navçeya Semsatê û gelek gund, gundik tevî erd û zeviyan di bin avê de man. Niha piraniya deverên nêzîkî bendavê têne avdan û li wan deran garis, pembo, titûn û gelek cureyên din ên riwekan têne ajotin. Di çend salên dawî de gihandina baxçeyên fêkiyan jî pêş dikeve. Bi taybetî baxçeyên behîv, fistiq, hinar û zeytûnan zêde dibin.

## Nifûs û Rewşa Aborî

Semsûr, ji navenda bajêr û 8 navçeyan pêk tê: Semsûr (Navend), Kolik (Gexte), Bêhisnî (Besni), Serê Golê (Golbaşî), Semsat (Samsat), Tut, Cêlika(n) (Çelikhan), Sincik û Aldûş (Gerger). Li gorî agahiyên ku ji Saziya Îstatîstîkî ya Tirkiye hatine wergirtin, di sala 2017an de li Semsûrê (tevî navçe, bajarok, gund û gundikan) 615 hezar 076 kes dijîn. Ji sedî 75ê kesan li navenda bajêr û navçeyan dijî. Ji sedî 25ê mayî jî li gund, gundik û bajarokan dijî. Li navendê 301 hezar û 501 kes dijîn. Piştî navendê navçeya herî mezin Kolik (Gexte) e. Li wir 120 hezar û 859 kes dijîn. Navçeya herî piçûk jî bi 9 hezar û 936 kesan Tut e.[98]

Di warê kanên binerd de Semsûr gelekî dewlemend e. Di salên dawî de, kanên wekî mermer, sifir (baqir) û neftê (petrol) derdixin ser rûyê erdê. Ji rejeya sedî şêstê nefta xam ya Tirkiyeyê li Semsûrê dertê.[99] Aboriya Semsûrê piranî li ser çandinî û pîşekariyê (sanayiyê) ye. Bazirganiya navxweyî piranî li ser hilberîna çandiniyê ye. Pîşekariya ku heyî jî piraniya wê li ser hemû hilberînên ji axê ye. Li herêma çiyayî aboriya gelek gundiyan li ser hilberîna titûna pêçandinê û xwedîkirina sewalan e. Li [illegible] gundên li herêma çiyayî hilberîna xalîçe û balîvên destan jî [illegible] li herêma deştê çandiniya genim, ceh, nok, nîsk, pembo, [illegible] fistiq û tirî zêde ye. Ew hilberînên ku têne berhevkirin

[98] adiyaman.gov.tr, nufus-bilgileri (12.09.2018).
[99] adiyamanli.org. tr, ekonomi.htm (01.12.2018).

ji bo firotinê ji bajarên derdorê re têne şandin. Tevî navend û navçeyan 369 kargehan destûra hilberîna amûrên sanayiyê sitendiye. Ji van kargehan ji sedî 25ê wan karê hilberîna cil û bergan (tekstîl), ji sedî 24 jî xurekan çêdikin. Ji bilî van her du qadan ji sedî 21 jî di qada seramîk, ax (tuxla), kan û mermerê de xebatên xwe didomînin. Yên mayî jî di qadên wekî kan (hesin û çelîk), mobîlya, petrol û hwd. de xebatên xwe dimeşînin.[100]

## Taybetiyên Devoka Semsûrê

Semsûr, wekî erdnîgarî li bakur û rojavayê çemê Feratê dikeve. Li başûr bi bajarê Riha (Urfa), li rojhilat Amed (Diyarbekir), li bakurê Meletî (Malatya) û li rojava û bakurrojava jî bi bajarê Meraşê (Maraş) û Dîlokê (Antep) re hemsînor e. Niştecihên hemû bajarên derûdorê jî bi piranî Kurd in û bi zaravayê Kurmancî diaxifin. Lêbelê ji ber sedemên cur be cur hejmara kesên ku bi Kurdî diaxifin roj bi roj kêmtir dibe. Bi taybetî li herêma Mereş, Meletî û Dîlokê kesên ku bi Kurdî diaxivin gelekî kêm bûne, Kurdî bêtir li nav hin gund û bajarokan maye. Li bajarên derdorê zimanê serdest Tirkî ye. Lêbelê Semsûr ne wisa ye. Tiştê ku bi mijara me ve girêdayî ew e ku zimanê Tirkî bandora xwe li ser zimanê Kurdî jî kiriye. Ji ber ku zimanê perwerdehiyê Tirkî ye. Girêdayî vê yekê li herêma Semsûrê navê hin nexweşî û dermanên ku têne bikaranîn jî Tirkî ye. Wekî, dongizbaşî, qîlbaşî û hwd. Her weha di jiyana rojane de bandora baweriya Îslamê û zimanê Erebî li her qadê li ber çavan e. Gelek peyv û têgehên Erebî di jiyana rojane de têne bikaranîn.

Ji bo ku xebata me bigihêje armanca xwe divê em hin taybetiyên devoka Semsûrê li vir destnîşan bikin. Divê em di serî de diyar bikin ku ev xebat ne xebateke rêzimanî ye û sînorên devokan jî ji sedî sed ji hev nayên veqetandin. Tiştên ku li jêr hatine gotin, di encama tecrûbe, çavdêrî û axaftinên bi jêderan

---

100 Ahmet Özkaya, Cansu Bakır, Yunus Şahin, Kader Uzun, "Adıyaman'da Güneşte Kurutulan Üzüm ve İşlenmiş Kuru Üzümlerin Yağ Asitlerinin Karşılaştırmalı Değerlendirilmesi", *Adıyaman Üniversitesi Fen Bilimleri Dergisi*, 2014;4 (1), r. 20.

re derketine holê.

Bi kurtî divê em li ser van taybetiyên ziman çend gotinan bibêjin:

- Li herêma Semsûrê di axaftinên rojane de peyv gelekî têne kurtkirin û tewang di gelek peyv û gotinan de xuya dibe. Ew yek jî rê li ber zehmetiya nivîsandin û deşîfrasyonê vedike. Ango dema ku peyv û hevok wekî ku têne axaftin bêne nivîsandin bi awayekî zelal nayên fêhmkirin. Lê dema ku li gorî rastnivîsa Kurdî/Kurmancî bê nivîsandin jî taybetiyên devokê wenda dibin. Dîsa jî me hewl da ku dest nedin axaftinên jêderan da ku taybetmendiya devoka Semsûrê derkeve holê. Ji bo ku mijar baştir bê fêhmkirin em ê li vir çend mînakan bidin:

> "Wê rojê du mirov ji bo karekî hatibûn mala me. Min îro ew li nav bajar dîtin. Min got: "We ew karê xwe çawa kir?"

Heger ev hevok bi devoka Semsûrê bê gotin, divê bi vî awayî bê gotin:

> "Wê rûye di meri sewê îşikî hatiwûn malê me. Mi hiro ew li nav bajêr dîn. Mi go: "We ew îşê xa çito/çir kir?"[101]

Wekî ku tê dîtin guhertin, tewang, kurtkirina peyvan û bandora zimanê Tirkî di gelek peyvan de xuya dibe: roj-rû; du-di; mirov-meri; ji bo- sewê (sebebê); îşkî- karekî; hatiwûn-hatibûn; malê me-mala me; mi-min; îro-hiro;

- Hinek peyv tewiyane. Wekî: bajar-bajêr

- Kurtkirina peyvê heye. Wekî: mirov-meri; min-mi; got-go; dîtin-dîn.

- Di hinek peyvan de têkçûyîna tîpan û veguhestina tîpan bi hev re heye. Wekî: xwe-xa; du-di.

- Hinek peyvên biyanî ketine dewsa yên Kurdî. Wekî: kar-îş; ji bo- sewê (sebebê);

- Hinek peyv bi giştî guherîne. Wekî: çawa-çito/çir

- Hinek peyv jî qet neguheriyane. Wekî: kir-kir; ew-ew; li-li; nav-nav.

101 Jêder: 41.

- Di hinek peyvan de tîpa serî hîn jê neketiye û di heman peyvê de tîpguhêzî jî heye. Wekî: Îro- hiro. (tîpa "h" xwe parastiye; tîpa "î" bûye "i")

Her weha taybetiyeke devoka Semsûrê jî ew e ku gelek peyvên ji zaravayên din ên Kurdî jî di nav Kurmancî de cih girtine û têne bikaranîn. Wekî: Mange (çêlek). "mange" bi Kirmanckî/Zazakî ye; ard (ar, arvan). ""ard" bi Zazakî/Kirmanckî ye.

- Gelek peyv li gorî cih û hevoka ku tê bikaranîn wateya xwe diguherînin. Mînak: peyva "kurik" bi sê wateyên cuda tê bikaranîn:

1. Zarokên lawîn. Mînak: Du kurik û keçikek wî hene.
2. Zarok (çi keç çi jî law dibe). Mînak: Çar kurikên wan hene.
3. Jin (bi wateya mecazî): Ez neyî li mal im lê kurikên me (jina min) ê li mal in.

## BAWERIYA BI XWEZAYA PÎROZ

Pîrozdîtina deverên wekî kanî, şikeft, kevir, çiya, newal û hin jîndarên wekî dar û sewalan ji destpêka mirovatiyê heta niha didome. Bi taybetî ji bo civakên "kovî" dinya bi giştî zindî ye. Dar jî di nav vê pergalê de ne. Mirov wisa bawer dikin ku wekî yê mirovan rihê daran jî heye. Mirov li gorî vê zanebûnê û baweriyê li hember daran tevdigerin.[102] Li gelek deverên dinyayê ev bawerî heye. Wek mînak, endamên Wanîkayên li Afrîqaya Rojhilat wisa bawer dikin ku rihê hemû daran bi taybetî jî rihê dara gûza hindê heye. Birîna dareke gûza hindê û kuştina dayikekê wekî hev e. Lewra çawa ku dayik xwarin û jiyanê didin zarokên xwe ew dar jî heman tiştî dide mirovan.[103]

Keşîşên Siyamê (Tayland), wisa bawer dikin ku rihê her tiştî heye û tunekirina tiştekî -ji rêzê be jî- wek qetandina rihekî ji beden a bi darê zorê ye: "Çawa ku destê kesekî *bêtawan nayê*

---

102 Yaşar Çoruhlu, *Türk Mitolojisinin Anahatları*, Kabalcı Yayınevi, İstanbul 2002, r. 110-111.

103 Şaban Erdiç, "Bir İnşa Süreci Olarak Fenomenolojik Perspektifte Kutsal ve Kutsallaşma: Ziyaret Fenomeni Örneği", *Millî Folklor*, 2017;29 (114), r. 39-51.

*şikandin wisa guliyên darê jî nayên birîn."*[104] Di nav gelên Sîbîryayî de bawerî ew e ku laşê mirovan ji axê; hestî ji daran û bêhnsitendin jî bayê tê. Ev bawerî, piştî pejirandina baweriya bi Îslamiyetê jî di nav gel de jiyaye. Li ser dar, gor, av û keviran gelek gotegot (rîwayet) û çîrok hatine gotin. Ji bo parastina mirovan ya ji nexweşiyan, xelasbûna ji nexweşiyan û gihîştina mirazan ji van tiştên "xwezaya pîroz" sûd hatiye wergirtin.[105]

Li gorî mirovê prîmîtîv (mirovê hov), zarvekirin ango teqlîda tiştekî ji nû ve vejandina wê mîtê yan baweriyê ye. Bi vî awayî dem û cih dibin yek. Mirov ji bo demekê diçin serdemên berê û di wê demê de li wê deverê dijîn. Ev bawerî bi awayekî heta îro jî hebûna xwe didomîne. Li gelek deverên Anadolê dar, gor, kevir, kaniyên ku wekî nîşanên (sembol) navendî têne pejirandin hene. Yek ji van nîşanan av e. Av, him jiyanê dide him diparêze û him jî dawî li jiyanê tîne. Li herêma Anadolê av bi xwe gelekî pîroz e. Li gorî baweriyê, *"kesê ku li ser avê be mar jî pê venade"*. Ava ku diherike jî wekî pîroz têne pejirandin. Li gorî baweriya gel, hêza ava herikbar pêşiyê li qeda û belayan digre. Ew bawerî, ji beriya Îslamê heta niha di nav Kurdan de jî heye û hîn jî didome. Kurdên ku li herêmên çiyayî dijîn, xwezayê wekî dostên xwe dibinin. Kevir, taht, sûlav, sewal, riwek û hwd. her yek ji wan ji aliyê Kurdan ve wekî rengvedana "hemrih"ê mirovan têne hesibandin. Lewra Kurd, ji bo her dareke mezin ku li ber çemekî, tahtekî, kaniyekê şîn hatiye rêzê digrin. Ji wê kaniyê û darê bawer dikin.[106] Dar, ji wan re dibe *"dara mirazan."*

Li Semsûrê û derdora wê, dema ku yek diçe cihekî li pey wî ava vexwarinê ya paqij direşînin. Wisa tê bawerkirin ew av dê wî kesî/wan kesan biparêze. Ew ê wekî wê avê pak herin û pak werin. Dema ku bûk ji mal dertê, ji bo ku bextê wê jî wekî avê pak û zelal be, divê di ser avekê re çim (derbas) bike. Dema ku yek dike rihê xwe ji dest bide kesên derdorê qurtek av dixin devê kesê/a li ber mirinê û *"bila bê av neçe."* dibêjin.

104 James G. Frazer, *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, r. 61.

105 Adem Koç, "Şifa Ocaklarında Kozmogoninin Kültürel Sürekliliği", *Millî Folklor*, 2016, 28 (109), r.177.

106 Izady, *Bir El Kitabı Kürtler*, r. 413.

Hin av û kanî hene ku li gorî baweriya gel -bi serê xwe- wekî derman in. Dema ku zarok an jî mezin bi tayê dikevin wan dibin ber *kaniyên tayê* û serê wan bi wê ava sar dişon. Bi dar û berên derdora wan kaniyan ve paçikan girêdidin û mirazan dixwazin. Wisa tê bawerkirin ku ew kanî û av dê tenduristî û mirazê wan bi cih bîne.[107] Ev miraz piranî li ser xelasiya ji nexweşiyan û evînê ne. Lê mirazên ku wekî dewlemendî, bidestxistina karekî, ezmûnekê û hwd. jî têne xwestin jî hene. Mirovên ku mirazê xwe ji avê dixwazin, bi serê wê kaniyê/darê sond dixwin ku heger mirazê wan bê cih dê careke din werin ber kaniyê û loqmeyekî bidin.

Li herêma Semsûrê kêm zêde li derdora her êrik û ziyaretê kaniyek heye. Wisa tê bawerkirin ku ew kanî û av jî wekî axa li dora ziyaretê şifayê belav dikin.[108] Wek mînak, li gundê "Malên Bêxçe" û "Narinceya Komîrê" kaniyên tayê hene. Her kesê ku bi tayê ketiye diçe ber wan ziyaret û êrikan ji wê avê vedixwe, bi wê ser û çavên xwe dişo. Gel ji dil û can bi şifabûna ava wan kaniyan bawer dike. Di vê mijarê de jêderekê serpêhatiya xwe weha vegot:

> "Mi ta girt, kirî ku ez bimrim. Dev û didanê mi li hev diketin. Mi çend orxan (lihêf) davitin ser xa jî pere nadikir. Ez rawûm çûm ber Kaniyê ta! Ê li Malê Bêxçe ye. Mi av li xa kir. Di-sê mist jî vexarin. Ê mîna cemedê ye. Mi nan û pîvazik hişk jî danî keviyê kaniyê û ez hatim mal. Di ser wê de ez spîsax bûm."[109]

Kesê nexweş -heger bikaribe- ji wê avê hinekê bi xwe re tîne mal û wekî teberikê li zarok, cîran û nasên xwe belav dike. Di belavkirinê de mafê pêşî yê kesên nexweş e. Piştre endamên malbatê û der û cîran tên. Wisa tê bawerkirin ku ew av heger bikeve nav xwarinê û malê dê bereketê bîne, mirovan ji çavînî-

107 Mehmet Yardımcı, "Yer - Su Kültünün Geleneksel Kültürümüzdeki Yeri ve Şiirimize Yansıması", *VIII. Milletlerarası Türk Halk Kültürü Kongresi Bildirileri, İzmir 2011*, r. 1-10.

108 Ayse Özcamus (Yavuz), *Adıyaman Merkez ve Çevrelerindeki Adak Yerleri ve Uygulamaları*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Gazi Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü, Türk Halk Bilimi Anabilim Dalı, Ankara 2007.

109 Jêder: 4.

bûnê diparêze, mêjiyê zarokên ku bikevin ezmûnan vedike.

Li hin herêmên Semsûrê darên hinarê jî pîroz in. Wekî mînak em dikarin Êrikê Henarê bidin. Ev êrik, di navbera gundê Narince û Omeran de ye. Berê dihat bawerkirin ku ev darhinar pîroz e û notirvaniya erdên derdorê dike. Şêniyên herêmê ji bo mirazên xwe serdana darê dikirin û paşê pot û qerpal pê ve dikirin. Lêbelê çend sal berê xwediyên erdan ew dar jê kirine. Ji ber ku li derdora erdan dîwarên bilind hatine çêkirin êdî serdana Êrikî Henarê jî nayê kirin û hêdî hêdî jibîr dibe. Li herêmê, gelek kesên ku temenê wan di biniya 35 salan de ye, haya wan ji vê ziyaretê tuneye. Derbarê ziyareta navborî de tu belge û delîlên nivîskî di dest me de nînin. Êrikê Henarê, ji tirbe û ziyaretekê wêdetir wekî perestîşekê (kult) tê zanîn.

Li gundê Girik bi navê "Pêka Dundilê" zinarek heye. Tê bawerkirin şopa lingê hespê Hz. Elî li ser vî zinarî ye. Li gundê Şêxbor, dareke çinarê ya qerase heye. Zêdeyî şeş sed salî ye. Kaniyek li berê ye. Tê bawerkirin ku ev çinar pîroz e û pelên wê şifa ne. Notirvanekî vê darê heye. Li bajarokê Bilamê bi navê Zerban kaniyek heye û tê gotin ev kanî jî pîroz e. Nexasim havînê û biharê gel tê ber vê kaniyê. Li vir qurbanên xwe serjê dikin, boraqên xwe didin û loqmeyan belav dikin.

Di nav her gelî de ji aliyê olî ve du komcivakên mirovan hene. Yek ji wan komeke piçûk e ku ji teorîzanan pêk tê. Ev kom, xwe di ser civakê re dibîne û di warê zanînên olî de *"ola kîtabî"* ango *"ola nivîskî"* ji xwe re wekî rêber hildibijêre û li gorî zagon û rêzikên wan kitêban ên hişk, sabît û razber dimeşe. Koma din jî ji civakên gel ên "ji rêzê" pêk tê û ji ola kitabî zêdetir di rêya *"ola çandî û kevneşopî"* de dimeşe. Di vir de rastiyek dertê holê. Ew jî hebûn, hebandin û serdana ziyaretan e. Gel ji bo ku jiyana xwe têxe rê û rêzikekê serî li van deveran dide, li wir dia dike, lava dike, qurbanan dide. Li wir, ji bo pirsgirêkên xwe yên tenduristiyê şifayê digere û hêviyan ji wan deveran dike. Ji aliyê din ve wekî tevgereke çandî bi kesên derdora xwe re tev digere, ji bo demekê be jî ji kar û barên rojane dûr dikeve. Hin kêmasiyên xwe yên wekî xizanî, nezanî, hêrs û kerbên xwe ji bîr dike. Ji vî

aliyî ve ol, bawerî û serdana van deveran di sazkirina pergala civakê de cihekî girîng hildigre.

## ZIYARET (ÊRIK) Û TIRBEYÊN LI SEMSÛRÊ

Li herêma Semsûrê jî wekî hemû deverên din ên Tirkiyeyê gelek ziyaret û tirbe hene. Ji wan ziyaret û tirbeyan 26 heb jê bi nav û deng in. Gel di demên cihê de serî li wan dide. Gelek ji wan ziyaretan wekî mezin û pêşengên ola Îslamê têne zanîn. Lê derbarê hin ziyaretan de jî agahiyên berfireh nînin: Ayzer Xefalî (Ebû Zer Xiffarî), Mehmûd Hesarî (Mahmud el-Ensarî), Êrikê Komîrê (Şah Mehmedê Misrî), Ziyareta Bê (Yel Baba), Ziyareta Zagê (Şêx Evdirehmanê Erzincanî), Tirbeya Safwan bîn Muattal, Ziyareta Qazxan Dede (Gazihan Dede), Êrikê Zênel Evdî (Zeynel Abidin), Tirbeya Hecî Ayzer Bawa (Hacı Abuzer Baba) û Ziyareta Turmûzê (Ziyareta Şax Huseyîn) hin ji wan ziyaretan e.

Wekî ku ji navan jî diyar dibe, di nav wan ziyaretan de gelek pêşengên mezheba Elewîtiyê jî hene. Lewra, heta demeke nêzîk, niştecihên herêma Semsûrê gelek jê girêdayî vê mezhebê bûn. Li gorî hin çavkaniyan ji nifûsa Kurdan ji sedî bîst îro jî bi mezheba Elewîtiyê ve girêdayî ye.[110] Li gorî Peter Alford Anrews, hejmara Kurdên Elewî ji sedî sih e.[111] Hin ziyaret hene ku ji bo her du mezbeban (Sunnî û Elewî) gelekî girîng in. Ayzer Xefalî, Mehmûd Hesarî û Zênel Evdî ji van in. Tiştê balkêş ew e ku di nav civaka Elewî de baweriya bi heyberên xwezayî hinekî din zêdetir e. Ew yek ji zêdebûna êrîkên dar, kevir û kaniyan diyar dibe.

Li jêr hin ji wan ziyaret û tirbeyên li Semsûrê, li gorî hevpeyvînên ku ji aliyê me ve hatine kirin bi kurtî hatine danasîn û mebesta serdana wan hatiye vegotin.

### *Êrikê Komîrê (Şah Mehmedê Misrî)*

Ev êrik, bi qasî 21 km li bakurrojhilatê Semsûrê, li navenda bajarokê Komîrê ye. Êrik (ziyaret) li ser kaniyeke mezin hatiye

110 Izady, *Bir El Kitabı Kürtler*, r. 272.

111 Peter Alford Andrews, *Türkiye'de Etnik Gruplar*, Ant Yayınları, İstanbul 1992, r. 161.

lêkirin. Niştecihên bajarokê Komîrê ji vê avê vedixwin. Her weha, niştecihên 12 gund û gundikên derdorê bi ava wê kaniyê erdên xwe av didin. Êrik, ji odeyeke piçûk û hewşeke piçûk pêk tê. Li aliyê jêrîn dareke çinarê ya gelekî mezin û pîr ku pîroz tê hesibandin heye. Di nav rehên wî çinarî re ava kaniyeke piçûk diherike. Di hundirê ziyaretê de sandûqayeke piçûk ku bi rûberên kesk hatiye xemilandin heye.

Li gorî rîwayetên ku gundiyên Komîrê û derdorê dibêjin, li ser parvekirina ava wê kaniyê du eşîran şer kiriye. Gelek xwîn rijiyaye. Ji her du aliyan jî gelek mêr hatine kuştin lê pirsgirêk çareser nebûye. Rojekê dîsa her du aliyan biryar dane ku dotira rojê şer bikin. Amadekariya şer kirine. Wê şevê baraneke bi şid û şên bariye. Dema ku serê sibehê rabûne dîtine ku tahtekî (lat) mezin ji jor ve hatiye û ketiye navenda kaniyê. Kanî bûye sê şet. Her kesê li wir ev yek wekî "dana Xwedê" pejirandiye û dev ji şer û pevçûnê berdane. Her kesek bi şetê aliyê xwe ve qayîl bûye. Piştî vê buyerê, li ser wî tahtî jî ziyaretek çêkirine. Ji wê rojê û heta îro ew ziyaret li wir e û ew av jî wekî sê şetan diherike.[112]

Li gorî rîwayeteke din jî, Şah Ehmed û Şah Mihemed du bira ne, ji aliyê Misrê hatine. Şah Ehmed çûye aliyê Sêwazê (Siwas) û Şah Mihemed jî li Komîrê maye.[113] Gelê herêmê ji bo her cure nexweşî serî li ziyaretê dide. Dema ku derî girtî be kevirên dîwarê ziyaretê maçî dike û eniya xwe dide ser. Bi taybetî, di salên ku baran kêm dibare de ji bo ku baran bibare serî li vê ziyaretê dide. Gundî çend rojan pêş de biryarê didin ku dê roja înê herin ber ziyaretê. Her kes li gorî derfetên xwe amadekariya loqme dike. Roja înê li hev dicivin, diçin ber ziyaretê. Hemû xwarinên ku anîne dikin yek. Loqmeyê xwe çêdikin û li hevdu û mêvanan belav dikin. Kesên ku wek rêwî di wir re derbas dibin jî vedixwînin xwarinê. Piştre dadikevin ser kaniyê. Bi ava kaniyê û hevdu şil dikin. Wisa bawer dikin ku dê di demeke nêzîk de baran bibare.[114]

---

112 Jêder: 7, 12, 19.

113 Nuran Çetin, *Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi*, r. 25-26.

114 Jêder: 26, 28, 34.

Lê mixabin, di salên dawiyê de li jora vî êrikî gelek kanên mermerê hatine vedan. Ji ber vê yekê ava kaniye herimiye û şolî diherike. Gelê herêmê vê yekê wekî êrîşeke li ser perestgehê xwe dipejirîne û bertekê nîşan dide.

### *Zênel Evdî (Tirbeya Zeynel Abîdîn)*

Bi heman navî du ziyaret li Semsûrê hene. Yek li gundê Gaxindagê yê girêdayî Kolikê; ya din jî li nêzîkî navçeya Kolikê ye. Li gorî rîwayetan tirbeya Zênel Evdî ya li gundê Gaxindagê ya neviyê Hz. Elî ye.[115]

Serdana vê ziyaretê, ji bo hemû daxwaz û mebestan tê kirin. Lêbelê bi taybetî ji aliyê kesên ku zarokên wan tunene yan hebin jî hemû keçik bin ve. Berê ji aliyê komeke piçûk ve serdana wê tê kirin. Piştî ku zarok çêbû –heger lawik be navê wî "Zeynel", "Abîdîn" yan "Zeynel Abîdîn" datînin. Qurbanekê amade dikin, gazî meriv, nas û dostên xwe dikin û diçin ber vê ziyaretê. Li wir qurbana xwe serjê dikin û dipêjînin, wekî loqme belav dikin.[116] Hin kes jî berî ku mirazê wan çêbibe di dema serdana pêşî de qurbana xwe dibe û li wir serjê dike, belav dike. Zênel Evdî jî wekî ziyaretên din ên herêma Semsûrê hem ji aliyê civaka Elewî ve hem jî ji aliyê civaka Sunnî ve wekî cihekî pîroz tê pejirandin û serdana wê tê kirin. Ji vî aliyî ve ev ziyaret jî wekî yên din di navbera her du civakan de wekî çand û peymaneke hevpar e. Civak bi alîkariya pratîkên weha nêzîkî hev dibin û çandeke lihevhatî û hevpar ava dikin.

Di sala 2017an de ji aliyê walîtiya Semsûrê ve xebatên ji nû ve sererastkirina hawirdora tirba Zênel Evdî hate meşandin. Li wir qada serjêkirina qurbanan, kanî û cihê destavê ji nû ve hate sererastkirin. Hewşa ziyaretê bi kevirên miftekirî hate raxistin. Ji bo zarokan û mêvanan cihê bêhnvedanê hate amadekirin.[117]

115 http: www.adiyamankulturturizm.gov.tr, TR-61379, turbeler.html (30.11.2018).

116 Fevzi Rençber, "Adıyaman Alevilerinde Türbe ve Yatır Ziyaretleri", *Türk Kültürü ve Hacı Bektaşı Veli Dergisi*, 2014; 71, r. 216.

117 http:www.adiyaman.gov.tr, zeynel-abidin-hazretleri-turbesinin-cevre-du-

### *Ziyareta Bê (Êl Baba)*

Bi vî navî sê ziyaret li Semsûrê hene. Yek jê li gundê Qizilcepinarê ya navçeya Semsatê, her duyê din li Semsûrê ne. Yek li gundê Misûrka ye, ya din jî li navenda Semsûrê li taxa Musalla ye. Ya li Misûrka, wekî avahiyekê ye. Ya li taxa Musallayê jî wekî gorekê hatiye çêkirin. Kesên ku ba û şewat di çokên wan de hene rojên êvara înê (pêncşemê) serî li wan ziyaretan didin. Destê xwe di gorê didin û piştre di çokên xwe didin. Dia û ricayan ji gorê dikin. Ji axa derdora wan goran hinekê bi xwe re tînin malê. Wê axê dixin nav avê û bi wê avê serê xwe dişon yan cihê ku ba ketiye dişon. Hêvî dikin ku ba û şewata laşê wan bişkê. Ziyareta li gundê Kizilcapinarê ya navçeya Semsatê jî bi heman mebestê tê serdana wê tê kirin.[118]

### *Êrikê Şêxella (Tirbeya Şeyxullah)*

Ev ziyaret li nêzîka gundê Mazêlê (Bölükyayla) yê li ser Kolikê ye. Di sînorê Semsûrê û Kolikê de ye. Bi qasî 16 km nêzîkî Kolikê û bi qasî 27 km jî nêzîkî Semsûrê ye. Di nav ziyaretê de tirbe an jî sandûqa nîne. Lêbelê di hewşa wê ziyaretê de hin xerabeyên ku dişibin helanê goran hene. Derbarê ziyaretê de agahiyên berfireh nînin. Zêde bi nav û deng nîne. Ji aliyê saziyên fermî ve xebateke sererastkirinê û parastinê nehatiye meşandin. Ji çend darên kevnare yên berûyê û hewşeke ku dîwarên wê bi kevirên nijîn (bêxerc) danîne ser hev pêk tê.

Li tenişta ziyaretê jûreke piçûk hatiye çêkirin. Deriyê wê jûrê her vekiriye. Di hundirê wê de hinek firaq û tejek heye. Gundiyên derdorê ji bo ku baran bibare û ji bo şewata/bayê jinûyan serî li wir didin. Taybetiya vê ziyaretê ew e ku niştecihên herêmê di heyva nîsanê de rojên çarşemê diçin ber wê. Li gorî mezinên gundên derdorê ev ziyaret di eslê xwe de ya peyrewên ola Êzdiyatiyê ye.[119] Ev agahî dibe ku rast be. Lewra tê zanîn

zenlemesi-yapildi (30.11.2018).

118 Jêder: 1, 5, 21, 69, 86, 87.

119 Jêder: 64, 126, 133, 137.

ku piştî 13ê Nîsanê di Çarşema yekemîn de, cejna Êzdiyan ya *"Çarşema Sor"* tê pîrozkirin. Delala Memê Recewî derbarê vê cejnê de weha dibêje:

> "Çarşema Sor, ev e'ydeke gelekî kevnar e. Di kûrahiya qur'na va te û di nav miletên Rohilata Navîn da hatiye û tê pîrozkirinê çawa e'yda Serê Salê. Çarşema Sor bi navê "E'yda Tawisî Melek", "Çarşema Serê Nîsanê", "Çarşema Serê Salê" jî tê navkirinê. Ev e'yd tê pîrozkirinê piştî 13ê meha nîsanê çarşema e'wil."[120]

Mirov dikare bibêje ku ev agahiyên ku Delala Memê Hinê dide, angaşta gundiyên derdorê hinekî piştrast dikin.

### *Ziyareta Ayzer Xefalî (Ebû Zer el-Xiffarî)*

Ev ziyaret bi qasî du kîlometreyan li rojhilatê Semsûrê, li ser girekî piçûk hatiye çêkirin. Di nav Kurdên herêmê de wekî ziyareta "Ayzer Xefalî" tê binavkirin. Li gorî rîwayetan, Ayzer Xefalî (Ebû Zer el-Xiffarî) yek jî sahabeyên girîng e. Di serdema Îslamê ya pêşî de ji bo belavkirina ola Îslamê hatiye vê herêmê û li dijî serdestên wê demê şer kiriye. Di şer de derb xwariye û bûye cangoriyê Îslamê. Li vir hatiye binaxkirin. Padîşahê Osmanî Muradê 4an di vegera sefera Bexdayê de, ji bo bîranîna wî, ev tirbe daye çêkirin.

Di hundirê ziyaretê de sandûqayeke bi qasî metro û nîvekê bilind û bi qasî 5-6 metroyan dirêj ku bi rûberekî kesk hatiye xemilandin heye. Li derdora ziyaretê cihê serjêkirina qurbanan, argund, destav, nimêjgeh û hewşeke fireh heye. Li tenişta hewşê goristana malbata Boynukara ku ji sed salî zêdetir e berpirsyariya parastin û paqijiya ziyaretê û derdora wê kirine heye.

Li gorî gotinên Coşkun Boynukara[121] ku îro nobedariya

---

120 Delala Memê R'ecevî, "Çarşema Sor", http: www.ezidxan.fr, ?p=2880 (25.11.2018).

121 Li gor agahiyên ku Coşkun Boynukara daye, yek ji bavkalên wî, ji bo ku dersdariyê (muderris) bike ji aliyê padîşahê Osmaniyan ve ji Stenbolê ji bo Semsûrê (Hisn-i Mansur) hatiye rêkirin. Ji wê demê û şûnde bavkalên wî li teniştа ziyaretê avahiyeke piçûk lêkirine û li wir ders dane feqiyan. Ji aliyê

ziyaretê dike, ev ziyaret tenê meqamek ji meqamên Ebû Zer el-Xiffarî ye. Gora wî li bajarê Medîneyê li gundê Xabzeyê ye. Ji bo pêşxistina Îslamê heta Semsûrê hatiye û şer kiriye lê bi sax û silamet vegeriyaye Erebistanê. Li bajarê Medîneyê li gundê Rebezêyê wefat kiriye û li wir hatiye veşartin. Ev tirbe bi fermana Muradê 4an yê padîşahê Osmaniyan, di vegera sefera li ser Bexdayê de hatiye lêkirin.[122] Li gorî lêkolîner Yağınlı, ew kesê ku tê behskirin û Ebû Zer el-Xiffariyê ku li Semsûrê veşartî ye ne heman kes in.[123]

Parazvanê ziyaretê debara xwe bi çiralixên ku gel dixe sindoqa bexişandinê û goşt û hwd. ku ji aliyê gel ve tê dayîn dike.

Ziyareta Ayzer Xefalî, ji aliyê gel ve pir tê hezkirin û rêza wê tê girtin. Her gav serdana wê tê kirin lêbelê piranî roja înê û dawiya hefteyê şemî û yekşemê mêvanên wir zêde dibin. Kesên ku zarokên wan ên kurîn tunebin tên ber ziyaretê. Dema ku zarokê wan çêdibe navê wî "Abuzer" datînin. Lewra li Semsûrê bi navê Abuzer gelek kes hene. Her weha di dawetan de ji bo ku bûk û zava temenekî dirêj, sax û silamet bi hev re derbas bikin, berî ku dawet dest pê bike yan piştî ku dawet diqede diçin serdana ziyaretê. Sandûqayê maçî dikin, dia dikin û tewaf dikin.[124]

### *Ziyareta Çiplêx (Ûryan Baba)*

Ev ziyaret li gundê Selemûtê (Sariharman) yê girêdayî Semsûrê ye. Di hundirê ziyaretê de ji bilî Çiplax Baba gora çend kesên din jî heye. Sandûqaya Çiplêx mezin e û bi rûberekî kesk hatiye pêçandin. Li gorî rîwayeta ku derbarê Çiplêx de tê gotin ew zilamekî gelekî baş û pak bûye. Li ba axayekî xulamtî kiriye. Li sewalên wî nihêrtiye. Ji bo ku dema veketinê pişt û laşê sewalan neêşê xwe tazî kiriye û xwe li erdê gindirandiye. Bi vî

din ve jî berpirsyariya paqijî û parastina Ayzer Xefalî hildana ser milê xwe. Piştî sazbûna Komara Tirkiyê, bi zagona tekke û zawiyeyan medrese hatiye girtin. Tenê parastina ziyaretê ji wan re maye.

122 Jêder: 106.

123 Yağınlı, *Adıyaman Merkez Ağzı ve Kültürü*, r. 70.

124 Jêder: 6, 14, 15, 25, 44.

rengî binê axurê sererast kiriye. Leqeba wî ya Çiplêx (tazî) jî ji wir tê. Rojekê ji holê wenda dibe. Derbarê Çiplêx de rîwayeteke din jî weha ye:

> "Diwên rokê axayê wî dihere hecê. Ew û jina axê jî li mal dimnin. Rokê, jinik kufta çêdike, bang li Çiplêx jî dike. Diwê:
> - Xazikê axa jî li vir bûya. Wî pir li kufta hez dikir.
> Çiplax diwê:
> - Xatûnê, dixwazî sanekê bide ku ez bem pê re.
> Jina axê, di dilî xa da diwê, qey fedi dike ki bê "kufta bide mi" loma hung diwê. Sanikê tiji kufte dike û diwê:
> - De were van kuftan bere axayî xwe re.
> Çiplax, radike kufta û dertê. Zemankî şûnda axa li hecê vedigere. Vir da û wê da gel tê cem axê. Axa diwê:
> - Mêne cem mi, herin cem wî. Çiplêx kuftê bi germî anîn mi ra heta hecê.
> Li ser vê gotinê, sira wî eşkere diwe. Ew jî wenda diwe."[125]

Niştecihên Semsûrê û derdora wê, ji bo her cure lava, hêvî û xwestekan serî li vê ziyaretê didin. Dema kesek bi diziyê ango dizîna tiştekî tê tawanbarkirin, wê kesî dibin ber wê ziyaretê wî li wir didin ber sondan. Heger ew kesê ku tê tawanbarkirin bi serê wê ziyaretê sond bixwe xwediyê mal û civak baweriya xwe bi duristbûna wî kesî tînin û dev ji tawanbarkirinê berdidin. Ew kes jî bi serfirazî di nav civakê de dijî. Lewra bawerî ew e ku heger kesek li wir rastiyê nebêje dê Çiplax li wî bide û wî di cih de kut (felç) bike. Kesên ku zarokê wan bi nexweşiya *kuxika qêqî* ketine têne ber vê ziyaretê. Zarokê nexweş sê caran di bin sivdera deriyê ziyaretê re derbas dikin. Wisa bawer dikin ku dê nesaxiya wan derbas bibe.[126] Di salên dawî de ji aliyê saziya Rêvebiriya Weqfan ya Herêmê ve hin xebatên sererastkirinê li ziyaret û derdora wê hatine meşandin.

---

125 Jêder: 12.
Tiştê balkêş ew e ku ev rîwayet di nav gelek çandên cuda de heye û ji bo kesên cuda tê gotin.
126 Jêder: 25, 144.

### *Ziyareta Hecî Ûsiv (Hecî Yusuf)*

Ziyareta Hecî Ûsiv, bi qasî 30 km nêzîkî Semsûrê li gundê Bozmîşê (Sarıdana) ye lê li ser navçeya Kolikê ye. Li gorî rîwayetan Hecî Ûsiv, bi eslê xwe ji gundê Qinixê ye. Xelîfeyê Nexşîbendiya ye. Di sala 1260î de miriye.[127] Dora ziyaretê wekî hewşekê hatiye lêkirin. Di hundirê ziyaretê de ji bilî sandûqaya Hecî Yûsiv du sandûqên din jî hene. Her weha ji bo mêvanan cihê razanê, xanîmal, nimêjgeh (mescid) û avdestxane jî hatine çêkirin.

Li gorî rîwayetan, dibêjin ku Hecî Ûsiv gelekî oldar bûye û ji piçûkantiya xwe û pê ve keramet nimandine. Hecî Ûsiv, bi zimanê cinan jî zanibûye û bi wan re ketiye têkiliyê.[128] Ji ber vê yekê li herêmê kesên ku hişên xwe wenda kirine û kesên ku derûniya wan xerab e tînin ber vê ziyaretê. Roja êvara înê yan pêncşemê tên ber ziyaretê, şevekê di hundirê ziyaretê de radizên. Wê şevê dia dikin, ê ku bixwazin nimêj dikin. Wisa bawer dikin dê ziyaret derûniya nexweşan baş bike.[129]

### *Ziyareta Zagê (Şêx Evdirehmanê Erzincanî)*

Ziyareta Zagê (Şêx Evdirehmanê Erzincanî), li gundê Zagê (Îndere) ye. Ji ber vê yekê jî li herêmê bi navê "Zag"ê tê nasîn. Tirbe li ser girekî li hemberî gund hatiye lêkirin. Ev gund bi qasî 7 km li bakurrojavayê Semsûrê ye. Di ziyaretê de ji bilî Şêx Evdirehman sandûqaya jina wî û keça wî jî heye. Şêniyên gund, ji Kurdan û mihacirên Tirk pêk tên. Gund, li qeraxê çemekî hatiye lêkirin.

Di navenda gund de, di devê newalê de kaniyeke mezin heye. Li tenişta wê kaniyê jî mizgefteke gelekî kevnare heye. Li gorî rîwayetan, ew mizgeft di serdema Şêx Evdirehman de hatiye lêkirin. Ziyaret, wekî komplekseke ye. Ji bilî odeya ku gora Şêx Evdirehman tê de ye, cihê razanê, xanîmal, hewş, cihê bêhnvedanê û mescid jî heye. Li hewşa ziyaretê çend gorên din jî

---

127 Yağınlı, *Adıyaman Merkez Ağzı ve Kültürü*, r. 19.

128 Nuran Çetin, *Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi*, r. 28.

129 Jêder: 3, 4, 11, 15, 30.

hene. Bi qasî ku em ji niştecihên gund hîn bûne ew gor jî yên parazvanên ziyaretê ne.[130]

Ew ziyaret, li derdora Semsûrê gelekî bi nav û deng e. Di her demsalê de gelek kes ve tên serdana wê. Ji bilî kesên ku qurban wedandine, serdana wê bi taybetî ji aliyê kesên ku kût (ferc) bûne, kesên ku dîn bûne, kesên ku bi cinan ketine û zarokên ku zêde har in ve tê kirin. Serdan, sê rojên înê li ser hev tê kirin. Heger derfet hebin, her carê şevekê di hundirê ziyaretê de radizên. Jêder, serpêhatiyên xwe weha vedibêjin:

> "Dapîra min ferc bû, birin Zagê, rehet bû."[131]
> "Kurik di şev, di xew de vediciniqîn. Şayîkî dibûn. Me dibir ber Zagê."[132]

Her weha ji bo her cure daxwazên din jî serdana vê ziyaretê tê kirin. Bi taybetî kesên ku gihîştine mirazê xwe ango xwestek û hêviyên wan bi cih bûne gazî nas û dostên xwe dikin, serdana Zagê dikin. Li wir qurbanan serjê dikin, loqmeyan çêdikin û li mêvan û kesên derdorê belav dikin.[133]

## Navên Nexweşînan bi Kurdî

Nexweşînên ku di nav Kurdan de hatine dîtin navên wan ê bi Kurdî jî hene. Navê nexweşînan li gorî herêm, zarava û devokan diguhere. Dr. İsrafil Bülbül û lêkolîner -nivîskar Mikail Bülbül li ser navên nexweşînan û danîna têkiliyan a navbera nexweşan û bijîşkan xebateke hêja amade kirine. Di vê berhemê de navê 61 nexweşînan bi Tirkî û Kurdî hatine destnîşankirin.[134] Me jî li gorî hevpeyvînên ku li herêma Semsûrê kirine navê gelek nexweşînan tesbît kiriye. Hin ji wan nexweşînan bi van nexweşînên ku İsrafil-Mikail Bülbül diyar kirine ve yek in. Tenê navê wan li gorî devokê diguherin. Lêbelê hin nexweşiyên ku

130 Jêder: 14.
131 Jêder: 11.
132 Jêder: 16.
133 Jêder: 23, 24, 42.
134 İsrafil Bülbül, Mikail Bülbül, *Kürtçe Anamnez-Anamneza Bi Kurmancî*, Diyarbakır Tabib Odası Yayınları, Diyarbakır 2009.

hem ji aliyê nav hem jî ji aliyê teşe û naveroka xwe ve cihê ne jî hene. Me ev nav jî li lîsteya jêr zêde kirin. Lê divê bê zanîn ku hin nexweşînên ku navê wan li jêrê nehatine rêzkirin jî di nav gel de hene û navê wan jî rengîn in. Gel, bi qasî zanîn û baweriya xwe ji van nexweşînan re li çareseriyan geriyaye. Li jêrê navê hin nexweşînên ku di nav gel de têne nasîn, digel navê wan ê bi Tirkî, hatine rêzkirin. Di cihên pêwîst de navên ku li herêma Semsûrê têne bikaranîn jî di nav kevanê de hatine nivîsîn:

**Agirê Cinan (Arê/arî Şevê)**: Uçuk
**Alagoşk (Argoşk, Guhrepik-Guhlepik)**: Kabakulak
**Arih (Êş)**: Acı, Ağrı
**Ava Spî (Perda Spî)**: Katarakt
**Ba (Reşeba-Şewat)**: Romatizma
**Bapêş (Bahor-Zekem)**: Nezle
**Bawesîr**: Basur, Hemoroid
**Belalûk (Balûg)**: Siğil
**Bêhnçikîn**: Nefes darlığı
**Bêhnsoyarî**: Astım
**Bênimêjî (Nexaşiya Jinan)**: Aybaşı
**Bersojk (Berşoşkî)**: Mide yanması-reflû
**Bexikî, Xenok, Qotik (Kuxika Qêqî)**: Boğmaca
**Bezek, Lareşe (Kula Reş)**: Kangren
**Birîn**: Yara
**Birîna Reş (Kula Salê)**: Şark Çıbanı, Leishmania
**Bîrov**: Egzema, Dermatit
**Bizûz**: Saçkıran
**Da (Ta), Cindarî**: Sara, epilepsi
**Dilêş (Sêdî, Xişt)**: Kalp ağrısı, kalp krizi
**Duşaxe**: Difteri
**Emel, Vîjik (Serûbin, Navçûyîn, Virikî)**: Ishal
Êş: Ağrı
Êşa Zirav, Jana Zirav: Verem, Tüberküloz
**Falinc (Felc)**: Felç
**Germijok, Germijk**: Isilik
**Gunek**: Testis Fıtığı
**Gurî (Xwirî)**: Uyuz
**Hal**: Veba
**Har**: Kuduz
**Hebreşk, Tebe**: Şarbon
**Heftûzk**: Çıban
**Jahrî**: Zehirlenme
**Kotî**: Cüzzam
**Kuxik**: Öksürük
**Kunêr**: Çıban
**Mahdxelîn (Dilrabûn)**: Bulantı
**Mîzel (Mîzok)**: Altını ıslatma, prostat
**Nîkutok (Mîrkutok)**: Kızamıkçık
**Penceşêr (Kula Reş)**: Kanser
**Pizrik**: Sivilce
**Pûç**: Felç
**Qebz (Qepis)**: Kabız
**Ricifîn/Lerizîn/Hezîn/Reelîn**: Titreme
**Riş**: Cilt kanseri
**Serêş**: Baş ağrısı
**Sorik**: Kızamık
Şewb: Grip

| | |
|---|---|
| Şewba Çûkan: Kuş Gribi | **Xwir:** Kaşıntı |
| Şikestin: Kırık | **Xurî (Avlîsk):** Suçiçeği |
| **Ta:** Ateş, Sıtma | **Xuşrîk (Xoşrîg):** Kurdeşen, Ürtiker |
| **Tahlî:** Burkulma, incinme | **Xûz:** Kambur |
| **Tewr (Lûr):** Alerji | **Zerik:** Sarılık |
| **Verşîn:** Kusma | **Zikêş:** Karın ağrısı |

Di xebata me ya li Semsûrê de, ji xeynî nexweşînên ku navê wan li jor hatine bilêvkirin, hin nexweşînên din jî hatine tespîtkirin ku navê wan dişibin navê van nexweşînan. Mînak, di zarokatiyê de bi navê *"ser û binê hîvê" (emel, vîjika zarokan)* nexweşînek heye ku dibe sedema emel, bêîştehî û bêtaqetiyê. Her weha bi navê *"kinî"* nexweşîneke din jî heye. Lêbelê derbarê vê nexweşiyê de me tu agahiyên zelal bi dest nexistin. Ji ber vê yekê jî di vê xebatê de, me cih nedaye vê nexweşînê.

## Hin Têgehên Girîng ên Bijîşkiya Gelêrî

Di mijara bijîşkiya gelêrî de nîqaşên cihê hene. Dundes, berevajî lêkolînerên folklorê yên ku dibêjin *"Folklor tiştekî dema raborî ye."*, ji bo folklorê dibêje: *"Li gor dîtin û rayeke çewt a derbarê folklorê de, folklor tiştekî raborî ye û hêla wê ya îroyîn hêleke netemamkirî ye. Li gorî vê raya çewt gelê dema îroyîn nikare folkloreke nû hilberîne û bi ser de gelê îroyîn folklora heyî jî ji bîr dike."*[135] Richard M. Dorson jî xeteke teqez naxe navbera nêzîkayîtêdana olî (dînî) ya gelêrî û tiba gelêrî. Her duyan di kategoriyên cihê de esas digre û balê dikişîne ser hin xalên wan ên hevpar. Ji bo vê yekê mînakekê dide û bawer dike ku kesên xwedîmucîze dikarin rihê hin kesan xelas bikin, laşê wan rihet bikin; dikarin nexweşînên giran, nexweşînên rihî yên wekî dînîtiyê rihet bikin. Li gor Dorson, pêxember (peyamber), kesên bi rêbaza telkînê (faith healer), bi rêbaza hêza veşarî (occultis) hwd. nexweşînan çareser dikin.[136]

135 Alan Dundes, "Folklor Nedir?", *Halk Biliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 2*, Gülay Aydın (Çev.), Geleneksel Yayıncılık, 2. Baskı, Ankara 2010, r. 17.
136 Richard M. Dorson, *Folklor û Teoriyên Folklorê Yên Îroyîn*, Necat Keskin (Wergêr), Weşanên Avesta, Stenbol 2017, r. 26.

Rêbaz, pêkanîn û rahênanên bijîşkiya gelêrî yên ji bo rihetkirin û tedawîkirinê, xwedî paşxaneyeke dîrokî ne. Ji nifşekî derbasî nifşekî din bûne û gihîştine heta roja îro. Lêbelê ev nayê wateya ku ji nû ve nayên afirandin an jî hin tiştên nû lê nayên zêdekirin. Ji sedsala XIXan ve li ser têgeha *"Gelo gel kî ye?"*, di navbera mirovên zanyar de nîqaş têne kirin. Nexasim jî di navbera mirovên zanyar ên di qada folklor, civaknasî û mirovnasiyê (antropolojî) de dixebitin dûr û dirêj hatiye nîqaşkirin. Wateya peyva *"gel"*, li gor serdeman, welatan, serdestan û mirovên zanyar diguhere. Wek mînak, li gor pênaseyên sedsala XIXan gel *"ew kesên nezan*, çiyayî û gundî ne; xwedîeynat" in. Heger em vê pênaseyê bipejirînin, gelo ma bajarî ne ji*"gel"* in? Taybetmendiyên gelan hene û li gor van taybetmendiyan tên senifandin. Mesela, bilêvkirina gotina *"gelê kovî û hoveber"*, bilêvkirineke ji bo mirovên beriya nivîsê ye. Li gor senifandineke din gel, *"mirov û gundiyên ji rêzê ne"*. Ew nezan, çiyayî û ji çîna tebeqeya jêr in. Bajarî, kesên xwende û bijarte jî gelê *"hevçerx"* in. Lê kifş e ku her du helwest û nêzîkatî jî berteng û çewt in. Dundes, sînorên peyva gel dorfireh kiriye û ji bo wê *"Gel, civata mirovan e ku herî kêm ji bo sedemekê hatine cem hev."* dibêje. Li gor vê yekê çi bûna vê faktorê (ziman, pîşe, dîn hwd.) ne girîng e.[137] Pênase çi dibe bila bibe, diyar û aşkere ye ku çand û jiyaneke xwemal a gel heye û li hember van nexweşînan ji bo parastina tenduristî û silametiya xwe û ji bo têkbirina nexweşînan tim û tim di nav lêgerînan de ye.

Têgehên ocax/malbat, mêr û jin hîmê bijîşkiya gelêrî ne. Bijîşkiya gelêrî ku li ser xeta ol û baweriyê dimeşe, xwe dispêre ocax û malbatan. Bijîşkiya ku bi rêbaza bikaranîna dermanên Kurmancî/Kurdewarî dimeşe jî xwe dispêre hekîmtiyê ku piraniya wan jî jin in. Loma bi kurtasî be jî lêhûrbûna li ser van têgehan wê di cî de be. Ji bo ku ferd/takekes hay ji statûya xwe ya civakî hebe, hem jî ji bo bi awayekî silametî jiyana xwe bidomîne û hay ji rolên xwe hebe, ev têgeh girîng in.

---

137 Alan Dundes, "Halk kimdir?", Metin Ekici (Çev.), *Halk Biliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 1*, Geleneksel Yayıncılık, Ankara 2006, r. 19.

## *Ocax/Malbat*

Malbat, bi wateya xwe ya ferhengî, xwe dispêre têkiliya di navbera jin û mêr, zarok, xwîşk û birayan ku ew jî yekîneya herî biçûk a civakê ye.[138] Lêbelê ev pênase, sînorên têgeha malbatê berteng dike. Lewra, dema ku em di çarçoveyeke civakî de li ser têgeha malbatê hûr bibin, têgeheke hîn dorfirehtir derdikeve pêşiya me. Li gor felsefeya serdema kevnare/antîk mirov, "microcosmos" e ango *"gerdûna biçûk"* e. Gerdûn bi xwe jî "macrocosmos" ango *"gerdûna mezin"* e.[139] Heke em vî kirasî li têgeha malbatê bikin, heger malbat *"gerdûna biçûk"* be, nexwe civak jî *"gerdûna mezin"* e. Di vê çarçoveyê de mirov dikare bibêje ku her mirov namzetê malbatekê ye û malbat jî nûnerê civakê ye.

Di hin xebatan de hatiye diyarkirin ku di dermankirin û başkirina nexweşînan de hin malbat derdikevin pêş û rola şifayê hildigrin ser milên xwe. Di nav gelê Semsûrê de jî ev malbat wekî *"ocax"* têne binavkirin. Bi wateya ferhengî peyva *"ocax"*ê -digel ku gelek wateyên wê yên din hene- girêdayî vê mijarê, wekî *"Malbata ku tê bawerkirin bi pêzanîn û agahiyên ku bi awayê destwergirtinê ji nifşê berî xwe wergirtiye û pê nexweşînan baş dike."*, *"Ew malbata ku tê bawerkirin ku hin nexweşiyan çareser dikin."* hatiye pênasekirin.[140] Di vê pênaseyê de li ser malbata ku ji silsileya bav û kalan nexweşînan tedawî dike hatiye rawestîn. Kifş e ku ocaxan li dor kevneşopiyan teşe girtine û xwedî hin bend, pîvan û edetan in.

Li herêma Semsûrê, ligel têgeha malbatê di heman wateyê de têgeha "mal" jî tê bikaranîn. Mal, him di wateya xanî/avahî him jî malbat û ber de tê bikaranîn. Wateya malbatê/malê carinan berfireh dibe û di wateya xizmên nêzîk (û heta ji bo xizmên dûr jî) de tê bikaranîn. Her weha malbat wekî berdewamiya silsileyê jî tê nirxandin. Îjar di bijîşkiya gelêrî de gava çanda ocaxtiyê esas

---

138 *Ferhenga Kurdî-Tirkî*, Zana Farqînî (Amadekar), Weşanên Enstitûya Kurdî ya Stenbolê, Çapa 1., Stenbol 2004: r. 1171.

139 Kadir Canatan, Ergün Yıldırım, *Aile Sosyolojisi*, Açılım Kitap, 2. Baskı, İstanbul 2011, r. 53.

140 Ferhenga Kurdî-Tirkî, Zana Farqînî (Amadekar), r. 1328.

bê girtin, wê bê dîtin ku tê wateya tevahiya zarokên malbatê û xizmên ji silsileya bavî jî. Malbatên ku di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de, kevneşopiya *"ocax"*ê didomînin bi hin xebatan hatine destnîşankirin û derbarê wan de hin gotar hatine nivîsîn.[141]

Ji teşeya malbatên ku tenê ji dê, bav û zarokên wan pêk tê re *"malbata teng"* tê gotin. Ji malbatên ku ji bilî dê û bav û zarokan endamên din ên malbatê (car caran kesên xerîb ku ne ji heman malbatê ne jî di nav de) jî bi hev re dijîn re *"malbata fireh"* tê gotin. Li gorî xebateke ku li ser têkiliyên nav malbatê û jiyana kesên ku di heman malê de dijîn hatiye kirin, di sala 2011an de li herêma Başûrrojhilatê Anadolê ji sedî 9,8ê kesan di malbatên fireh de dijiyan. Ji wan malbatan ji sedî 56ê wan li herêmên derbajarî dijiyan. Ev jî tê vê wateyê ku malbatên fireh hîn jî hebûna xwe didomînin. Di nav malbatên weha de parvekirina tecrûbeyên bijîşkiya gelêrî zêdetir in.

Li Herêma Semsûrê jî, heta demên nêzîk malbatên fireh ku ji bilî dê û bav û zarokan endamên din ên malbatê jî bi hev re dijîn gelek bûn. Di malekê de, wekî kevneşopiyekê dema ku lawikên mezin zewicîn tevî malê diman heta ku yê jê piçûktir hatiye zewicandin. Piştî kurê duyemîn hate zewicandin yan ji daweta wî re hindik ma ji bo ku ji lawikê duyemîn re cih were amadekirin yê mezin ji malê diqetiya. Ew yek heta kurê dawiyê bi vî rengî didomiya. Li gorî kevneşopiyê dê û bav heta ku mirine tevî kurê dawî dijîn. Heta ku xesû û xezûr sax bin, di nav malê de tenê peyva wan pere dike. Hemû biryarên girîng ew didin. Ew wekî mezinên malê, berpirsyariyên civakî jî bi cih tînin. Piştî ku ji taqetê dikevin êdî karên nav malê û derve nakin, bi neviyên xwe re demê derbas dikin. Berpirsyarî îcar dikeve destê bûk û zavê.

Keçik, piştî ku zewicîn ji malê diqetin û êdî tenê wekî mêvan dikarin werin mala bavê xwe. Dîsa wekî kevneşopiyekê ji mal û milkê bavan tiştekî nadin keçikan. Hemû tişt ji kuran re dimîne. Lêbelê heger dê û bav bixwazin dikarin hin alavên malê ji keçika

---

141 Ahmet Âkil Yağınlı, *Adıyaman Merkez Ağzı ve Kültürü*, Adıyaman Belediyesi Kültür ve Sosyal İşler Müdürlüğü Yayınları, 4. Baskı, Adıyaman 2013, r. 317-318.

xwe re berî dawetê wekî cihêz bikirin. Heger ku lawikên malbatê tunebin, piştî mirina dê û bavan ap û pismam dest datînin ser malê wan. Ew yek kevneşopî ye. Ne li gorî zagonên fermî ye. Ji aliyê din ve divê bê zanîn ku îstisnayên van pêkanînan jî hene.

Di jiyana malbatî de hebûna zarokan gelekî girîng e. Ji malbatên ku zarokên wan tunene re "kordûnde" yan "korocax" tê gotin. Di kevneşopiya Rojhilata Navîn de ber ango berdewamiya navê malbatê bi rêya mêran didome. Gelek caran civak, kesên ku lawikên wan nînin jî wekî kordûnde dihesibînin û dibêjin, *"ocaxê wan î kwîr e."* Li gorî civakê ew malbat *"reben"* in, *"kêm"* in; kes naxwaze ku bibe xwediyê vê nasnavê. Ji bo vê yekê jî gelek jin di temenê xwe yî piçûk de dibin dayik. Heger jin nikaribin zarokan bînin an têne berdan an jî hewî tê ser wan. Nêrîna li ser zewaca duyemîn ya meran li gorî bawerî û mezheban jî diguhere. Wek mînak, di nava civaka Elewî ya Semsûrê de hem jinberdan hem jî zewaca li ser jinê wekî "tiştekî nebaş-qedexe" tê pejirandin. Heta ku jina kesekî nemire destûra zewaca wî ya cara duyemîn nayê dayîn. Kesên ku li dijî vê yekê tev digerin ji aliyê civakê ve têne tehcîrkirin. Tunebûna lawikan, mirina mêrekî ya bi ciwanî (ji bo ku jina wî û zarokên wî li erdê (bêkes) nemînin) û hwd. wekî rewşên awarte têne hesibandin û destûra zewaca cara duyemîn tê dayîn.

Digel ku hêza wê hinekî kêm bûye jî wekî kevneşopiyekê hêza malbatê bi hebûna hejmara "mêran-lawan" tê pîvan. Lewra, berê hemû kar û bar bi hêza dest û milan dimeşiyan; şer jî her weha. Ji ber vê yekê bawerî ew bû: *Di nav malê de lawik çiqas pir bin ewqas baş e.* Ji bo ku lawik zêde bin jinan gelek zarok dianîn. Malbatên ku ji bo xatirê lawikan zêdetirî ji deh zarokan anîne dinyayê gelek in. Ji aliyê din ve ji ber nexweşiyan -bi taybetî jî nexweşînên vegir- gelek zarok dimirin. Ji bo ku wan zarokan bigihînin gelekî ked tê de xerc dikirin. Dema ku zarok nexweş dikevin, hîn jî gelek kes serî li dermanên bijîşkiya gelêrî û deverên pîroz didin. Ji şêx, mela û dedeyan hêvî û lava dikin. Lê digel hemû hewldanan jî mixabin hin ji wan zarokan di temenê piçûk de dimirin. Yek ji sedema anîna dinyayê ya zarokên zêde

jî ew e ku heta demeke nêzîk gel hay ji rê û rêbazên pêşîlêgirtina anîna zarokan nebû. Kesên ku hay jê hebûn jî ev yek wekî "guneh" dihesibandin.

## Jin

Wekî ku li gelemperiya cîhanê tê dîtin, li herêma Semsûrê jî jin ji zayendekê zêdetir ew kesa ye ku bêtir kar û barên malê re mijûl dibe. Di nav çanda Rojhilata Navîn de berpirsyariya parastina zarokan di serî de, parastina hemû endamên malê ya ji nexweşî, qeda û belayan, ji derb û birînan di stûyê jinê de ye.[142] Heger di mal de zarokekî astengdar yan jî xwesî û xwezûrê ku nikaribe pêdiviyên xwe bi cih bîne hebe, lêmiqatebûna wan jî ji aliyê jinan ve tê meşandin. Têrkirin, paqijkirin, nixumandin û şîretkirina zarokan hemû li ser pişta jinan e. Karên nav malê yên wekî amadekirina xurekan; şûştin, ziwakirin, rakirin, dirûna cil û bergan; paqijî û sererastkirina malê ji aliyê jinan ve tên kirin. Xwedîkirina sewalên li malê jî piranî wekî karên jinê tê dîtin. Jin, pez û dewaran didoşin; şîr dikelînin; penêr, mast, rûn, dew û hwd. çêdikin; alif û ava sewalan didin ber wan.[143]

Li Semsûrê debara gundiyan û bajariyan piranî li ser çandiniya titûnê ye. Ji ber ku karê titûnê jî gelek e û bi zehmet e jin, di karên nav erdan û çolê de jî li tenişta mêran dixebitin. Dema ku titûnê tînin malê jî bi karê pêvekirin, rakirin, darxistin, hişkkirin, daxistin, hilanîna titûnê û hwd. ve mijûl dibin. Dema ku mêr ne li mal be, hebandina mêvanan jî di nav de gelek karên mêran jî dikevin stûyê jinan. Ji ber ku berpirsyariya wan zêde ye, hin karên wan ji estetîkê dûr in. Dema ku ji amadekirina xwarinên taybet re tê veqetandin kêm e.

Li herêmên çiya, hin jin û keçik di tevnan de xalîçeyên destan û balîvên paş piştê çêdikin. Li gundên deştê û nav bajêr, malbatên ku rewşa wan ya aborî ne baş e jî gelek in. Di van malbatan de jin, ji bo ku alîkariya aboriya malbata xwe bikin

---

142 Rohat Alakom, *Jinên Kurd*, APEC, Sweden 1995, r. 20.

143 Aydeniz Alisbah Tuskan, "Toplumsal Cinsiyet Toplumda Kadına Biçilen Roller ve Çözümleri", *Türkiye Barolar Birliği Dergisi*, 2002; 25 (99), r. 446-447.

ji dawiya demsala biharê heta dawiya payîzê –wekî karker tevî zarokên xwe- diçin bajarên cihê û di karên çandiniyê yên wekî kolana pembo, berhevkirina mişmişan, bindeq (findiq) û hwd. de dixebitin.

Di dema şîn û şahiyan de jî karê jinan gelek e. Di şînan de ji aliyekî ve mêvanan pêşwazî dikin, ji aliyê din ve jî bi amadekirina xwarinên ji bo mêvanan re mijûl dibin. Li herêma Semsûrê serdana ziyaretan, şahiyên nîşan, dawet û sinneta zarokan wekî demên herî girîng yên bêhnvedanê û şahiyê têne hesibandin. Lêbelê di van şahiyan de jî hemû karên amadekarî û birêvebirinê li ser milê jinan e. Jin hawirdorê paqij dikin, xwarinan amade dikin, dipêjînin û belav dikin. Piştre dîsa ew firaqan dişon û radestî xwediyê wan dikin.

Ji aliyê perwerdehiyê ve li herêma Başûrrojhilatê Anadolê -ku Semsûr jî di nav de ye- jin li gorî mêran gelekî li paş in. Lewra, çûyîna dibistanan û xwendina jinan ji aliyê mêran ve demeke dirêj hatiye astengkirin. Lêbelê divê bê diyarkirin ku ev pirsgirêk roj bi roj kêmtir dibe. Nifşên nû dixwînin. Hin ji wan zanîngehan jî diqedînin û di karên fermî de cih digrin. Çi jinên xwende bin çi jî yên nexwende bin, bi perwerdehiya zarokan re dayik mijûl dibin. Ew zarokan amade dikin û dişînin dibistanan. Ew li rewşa perwerdehiya wan dipirsin. Jinên xwende, piraniya wan ji çanda bijîşkiya gelêrî dûr dikevin. Ji ber taybetmendiya vê xebatê jinên ku bi wan re hevpeyvîn hatiye kirin xwendina wan qet nîne yan jî gelekî kêm e.

### *Mêr*

Li herêma Semsûrê mêr -wekî ku di hemû çandên rojhilatî de heye- serdest e. Jiyan piranî li gorî daxwazên mêran saz dibe. Mafê birêvebirina aboriya malê, digel ku jin jî dixebitin, di destê mêran de ye. Mêr bi karên derveyî malê re mijûl dibin. Li bajêr karkerî, bazirganî û memurtiyê dikin; li gundan bi karên çandiniyê û sewalvaniyê ve mijûl dibin. Cot dikin, gubre-zibil û dermanan diavêjin zad û zerzewatan, karê çinîn û kayê dikin. Yên pezê wan hebin şivantiyê dikin. Dema ku karê wan yê

derveyî malê tunebe bêhna xwe vedidin. Bi karên nav malê re mijûl nabin. Diçin serdana hevdu yan li qehwexaneyê dicivin. Heger rewşa wan ya aborî baş be ji bo malbata xwe û paşeroja zarokên xwe erd, erebe û hwd. distînin. Di şîn û şahiyan de tevî jina xwe tevdigerin.

Ji jêderên ku bi wan re hevpeyvîn hatiye kirin, piraniya mêran xwendina bi zimanê Tirkî kêm-zêde dizanin lê bi taybetî ji aliyê nivîsandinê ve qels in. Gelek kesên ku temenê wan ji 55an zêdetir in li dibistanên ku wekî "Elî Oqili" têne zanîn hînî xwendin û nivîsandinê bûne. Di dema leşkeriyê de ji bo leşkerên ku xwendin û nivîsandinê nizanin hin qurs hatine vekirin. Li wir kesên ku xwendin û nivîsandina wan baş e, perwerdehiya xwendin û nivîsandinê dane leşkerên nexwende. Ji wan qursên perwerdehiyê re di nav gel de "Elî Oqili" tê gotin. Lewra di perwerdehiya ziman de hevoka yekemîn bi Elî (Alî) dest pê kiriye. Piştî ku dibistan zêde bûne piraniya mêran jî -qet nebe heta pênc salên pêşî- çûne dibistanê. Digel hemû pêşketinên di warê perwerdehiyê de jî îro bi rêjeya ji sedî 14ê gelê Semsûrê bê perwerdehî ye.

***Dermanê(n) Kurmancî/Kurdewarî***: Ew têgeheke giştî ye. Wateya wê gelekî berfireh e. Li herêma Semsûrê ji hemû dermanên ku kesên zana yan hekîm li gorî zanîna xwe, derfetên xwe, demsalê û bi riwek, amûr û alavên heyî çêdikin re tê gotin.[144] Taybetiya van dermanan ew e ku hemû xwezayî ne. Bêyî ku bijîşkekî fermî wekî reçete binivîse û li dermanxaneyekê bê firotin, tenê li malê an jî li derveyî malê têne çêkirin. Di nav Kurdan de ji hemû dermanên ku wekî kevneşopiyekê li malê û bi derfetên heyî têne çêkirin re jî "Dermanên Kurmanciyê" yan "Dermanên Kurdewarî" tê gotin.[145]

### *Nistî*

Li herêma Semsûrê ji hemû rê û rêbazên bijîşkiya gelêrî ku bi rêya pêkanînên sêhrî û ayînî têne meşandin re nistî tê gotin.[146]

144 Jêder: 1, 4, 5, 7, 8, 12, 19, 25, 55, 90.
145 Jêder: 5, 6, 9, 18, 44, 52, 70, 96.
146 Jêder: 15, 20, 24, 25, 35, 48, 70, 77, 86, 97.

Nistî, yek ji rêbazên bijîşkiya gelêrî ye. Nojdariya (tedawî) ku bi nistiyê tê kirin, ne ew dermankirin e ku yekser mudaxeleyî laş tê kirin.[147] Di hîmê vê rêbazê de bawerî û derûnnasî heye. Yanî bêyî ku mudaxeleyî laş bê kirin, bi heyber û hêzine metafizik re pêwendî tê danîn û nexweşîn têne çareserkirin. Di rêbaza nistiyê de, tê derpêşkirin ku kesên bi navê *"welî/qenc"*, *"sêrdar"*, *"pifker"*, *"ocax"*, *"biocax"* tên binavkirin, nexweşînan bi rêbazên nistiyan nojdariyê (tedawî) dikin. Nêrîna li nav çavê kesê nexweş, nivîsina hin tiştan a li ser kaxizê, kutana erdê ya bizmaran hwd. tenê çend mînakên nistiyan in. Qewitandina cinan, birîna belalûkan, parastina ji çavînîbûnê, qewitandina çavînîbûnê yan jî tirsşikandin/tirsvegirtin bi rêbaza nistiyan pêk tê. Li jêr derbarê nistiya xêzkirinê de hin agahî hatine dayîn:

Xêzkirin, rêbazeke bijîşkiya gelêrî ye ku nexweş bi liv û tevgerên sembolîk an jî bi destwerdana hêsan tê nojdarîkirin (dermankirin).[148] Nistiya herî berbelav e. Di gelek civakan de heye. Di vê rêbazê de, kesên *"pispor"* an jî kesên *"biocax"* hin deverên laşê nexweş xêz dikin, kun (qul) dikin, dax didin, jê dikin an jî hêdîka li laşê wan didin. Li gorî nexweşiyê devera ku dê bê xêzkirin yan jêkirin diguhere. Wek mînak, ocaxên zerikê, pişt guhê zarokên ku bi zerikê ketine hêdîka xêz dikin heta ku xwîn jê bê. Ocaxa ser û binan, bi teniyê li eniya zarokên emelî bûne xaçekê çêdikin. Zarokên ku baş nikarin bipeyivin, kistika (damara bin ziman) wan tê jêkirin. Rêbaza xêzkirinê, li Semsûr û derdora wê jî gelekî tê bikaranîn. Rê û rêbazên ku bi rêya nistî û xêzkirinê têne bikaranîn, piranî ji bo nexweşîna ku sîrayetî nexweş kiriye rihet bikin an jî ji bo ku tirsa li ser nexweş rakin bi awayekî sembolîk tê bikaranîn. Ev rêbazên sembolîk-psişîk, rêbazine weha ne ku teqlîda bûyer û rewşeke baş dikin. Endamên ocaxan, hewl didin ku bi gotinên sêhrî tesîrê li nexweşînê bikin û nexweşînê neqlî heybereke din bikin.[149]

---

Li herêma Mêrdînê û derdora Qerejdaxê têgeha nistî wekî destûr/îcazeya ku hekîmek dide dest şagirt an peyrewê xwe jî tê bikaranîn.

147 Akın Uyar, *Halk Hekimliği Kapsamında Yozgat Ocakları*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Bozok Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı ABD, Yozgat 2013, r. 28.

148 Jêder: 20, 32, 48, 61, 78, 85.

149 Jêder: 1, 6, 8, 17, 25, 41.

### *Derman (Drog)*

Derman (drog), piranî hilberînên sewal û riwekan têne amadekirin. Ev heyber, bi rêbazên taybet tên berhevkirin, hişkirin û di nojdariyê an jî di pîşesaziyê de tên bikaranîn.[150] Kanên (maden) xam an jî nîvxam jî wekî dorg/derman têne bikaranîn. Ev heyber, di pêvajoya nojdariya (dermankirin/tedawî) nexweşînê de car heye bi tena serê xwe tên bikaranîn; car caran jî çend heb bi hev re tên bikaranîn. Kesên ku di têderxistin (teşxîs) û nojdariya nexweşînê de xwedîtecrûbe ne, van heyberan nexasim jî riwekan bi wext berhev dikin; li gor pêdiviyê hişk dikin; dikelînin an jî hûr dikin û hiltînin. Gava ku pêdivî bi wan çêdibe derdixin û didin nexweş an jî pêşniyar dikin. Berî ku dermanan bidin nexweşan pêşî şert û mercên bikaranîna wê û pîvana bikaranîna wê ji nexweş re tê vegotin.[151] Niha hema bêje li cem extaran her cure riwek/nebat hene û têne firotin. Vê yekê jî karê bijîşkên gelêrî rihettir û hêsantir kiriye.

Di çend salên dawî de, tiba alternatîf ya bi riwek û kanên xwezayî berbiçav bûye û lêgerînên ji bo şifaya xwezayî zêde bûne. Ev yek jî dike ku dermanên riwekî ku di bijîşkiya gelêrî de têne bikaranîn careke din werin rojevê. Têkildarî vê bi navê *"riwekên bişifa"*, *"dermanên riwekî"*, *"mucîzeyên xwezayî"* hwd. bi dehan pirtûk, kovar û ansîklopedî hatine weşandin. Li aliyê din ve divê xeteraya bikaranîna van dermanan jî li ber çavan bê girtin. Lewra gelek kesên nexweş, bêyî ku rewşa xwe ya taybet li ber çavan bigrin van dermanan bi kar tînin. Di encamê de jî ji sûdê bêtir xisarê dibînin.

**Pîrik:** Ev têgeh bi wateya xwe ya ferhengî ji peyva "pîr" ango kesê salmezin tê. Piranî ji bo jinan tê bikaranîn. Her weha ji bo pêşengên bawerî yan jî terîqetan jî tê bikaranîn. Wekî Pîrên Elewiyan, Pîrên Êzdiyan.[152] "-ik" jî qertafa piçûkkirinê ye. Lêbelê

---

150 "Drog nedir?", https://acikders.ankara.edu.tr/mod/resource/view.php?id=3883 (19.12.2018).

151 Uygar Kurum, *Düziçi'nde Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Niğde 2008, r. 62.

152 Zana Farqînî, *Ferhenga Kurdî-Tirkî*, "Pîr", Weş. Enstitûya Kurdî ya Sten-

ew di wateya nazenîn û hêjabûnê de jî tê bikaranîn. Li herêma Semsûrê, sê wateyên din ên peyva "pîrik"ê hene: Yek jê ew e ku ji kesên ku di dema bûyîna zarokan de alîkariya jina ducanî dikin re "pîrik" tê gotin. Ya din, ji cureyekî kêzikan ku kon vedigrin re tê gotin. Di xebata me de "pîrik" piranî bi wateya "*peywirdara ku di dema welidandinê de alîkariya jina ducanî dike*" de tê bikaranîn. Wateya dawî jî ew e ku, *ji jinên ku nexweşiyan bi rêbazên bijîşkiya gelêrî derman dikin re* "pîrik" tê gotin.[153]

**Xet**: Li herêma Semsûrê ji xeynî wateya "kaxiz", ji bo nivîştên ku mela û şêx û hwd. çêdikin re jî "xet" tê gotin. "Xet" bi wateya "nivîs"ê jî tê bikaranîn.[154] Xet, ji bo gelek armancên cihê têne çêkirin. Li gorî mebesta xebata me, em ê di çarçoveya xetên girêdayî bijîşkiya gelêrî û baweriyên girêdayî bi wê mijarê de behsa wan bikin.

**Berbejn**: Nivîştên ku qasî dirêjahiya bejna mirovekî têne çêkirin re *berbejn* tê gotin. Li herêma Semsûrê hin malbat wekî kevneşopiyekê berbejnan çêdikin. Bi taybetî kesên ku zarokên wan çênabin serî li wan malbatan didin. Di berbejnan de gelek dia li pey hev têne rêzkirin. Hin caran jî heman dia gelek caran tên nivîsîn. Zimanê diayên berbejnan Erebî ye.[155]

Êrik: Bi giştî ji hemû cihên pîroz re tê gotin. Bi taybetî jî li herêma Semsûrê ji dar, kevir, şikeft, kanî û hwd. dever û tiştên pîroz re "êrik"tê gotin. Mirov di rojên taybet de ji bo hin daxwazan yan malavahiyan diçin ber wan êrikan. Li wir qurbanan didin; xwarinên cihê çêdikin û belav dikin.[156] Li her devera Semsûrê ji van êrikan hene. Wekî, Êrikê Henarê (dareke hinarê ye. Li gundê Narinceya li ser Semsûrê ye), Êrikê Çinarê Şêxbor (dareke çinarê ye, li gundê Şêxborya li ser Semsûrê ye), Êrikê Dargirê (li nav bajaroka Komîrê ye û dareke mezin ya berûyan e), *Kaniya Ta* (li nêzîkî gundê Malên Bêxçe ye; kesên ku bi tayê ketine diçin ber vê kaniyê û bi ava wê kaniyê serê xwe dişon) û hwd.

---

bolê, Stenbol 2004, r. 1446.

153 Jêder: 1, 2, 4, 8, 10.

154 Jêder: 7, 11, 15, 63, 81, 90, 107.

155 Jêder: 2, 3, 7, 8, 15, 23, 37, 40, 57.

156 Jêder: 2, 5, 6, 13, 20, 22, 26, 36, 100.

Wekî ku ji mînakan jî diyar dibe baweriya bi dar, kevir, kanî û hwd. piştî ola Îslamê jî dewam kiriye. Li dor gora kesên ku di nav gel de wekî "Qencên Xwedê" têne pejirandin hin avahî hatine çêkirin. Darên wekî çinar, mazî û tûyan li dor van êrikan hatine çandin. Gel di demên cihê de ji bo daxwazên xwe serî li van êrikan dide. Li wir hin rê û resman pêk tîne; dia û lavayan dike û piştre jî li wir qurbanan serjê dike û loqmeyan belav dike. Li gorî bawerî û zanîna gel, her kesê/a ku zirarê bide wan daran dê nifirî bibe û bobelatên mezin dê bên serê wî/ê. Ji ber vê tirsê jî darên li derdora êrikan gelekî temendirêj in. Li hin deveran gor wenda bûne. Li dewsa goran ew dar û kevirên derdora goran wateya pîroziyê hildane. Mirov, wan dar û keviran maçî dikin û diayan li wan dikin; ji wan lava dikin da ku mirazê wan pêk bê.[157]

**Gir:** Wateya gir ya ferhengî, *cihê bilind ku ji çiya nizimtir* e. Yek jî wateya peyvê "mezin" e. Di heman demê de li herêma Kolikê navê êrikekî (ziyaret) ye. Berê li herêma Semsûrê ji ber nexweşiyên berbelav, nezanîn û pêkanînên baweriyên batil gelek zarok di temenê xwe yê piçûk de dimirin. Car caran hemû zarokên malbatan li pey hev dimirin. Gel, wisa bawer dikir ku heger navê vê ziyaretê li navê zarokan bê zêdekirin dê zarok bijîn. Ji ber vê baweriyê peyva *"gir"*, li herêma Semsûrê wekî navê duyemîn li navê mirovan tê zêdekirin. Sedema wê jî ew e ku li gorî baweriya gel ev êrik zarokan dibexşîne malbatan. Bi taybetî jî zarokên kurîn. Bi taybetî malbatên ku zarokên wan "êfle" nabin (di emrê zarokatiyê de dimirin) diçin ber ziyareta "Kêvir (Gir)". Piştî vê serdanê jin û mêr bi hev re soz didin û dibêjin, *"Heger zarokê me çêbibe em ê navê vê ziyaretê li zarokê xwe bikin."* Piştî ku mirazê wan hate cih, navê vê ziyaretê li navê zarokên xwe zêde dikin. Mînak: Heger zarok keçik be û navê wê "Fatma" danîbin, navê wê xera dikin û peyva "gir" pê ve datînin. Navê keçikê dikin "Fatgir". Lêbelê navê zarokan yê di nasnameyê de xera nakin. Dîsa wekî "Fatma" û "Yusuf" dinivîsin. Heger zarok lawîn be û navê wî ""Usif" danîbin, navê

157 Jêder: 1, 4, 19, 23, 35, 48, 50, 81, 90.

"Usiv" xera dikin û navê "gir" pê ve datînin. Navê lawik dibe "Usgir". Li herêmê gelek navên bi vî rengî hene, wekî Xangir (Xanima Mezin), Fatgir (Fatmaya Mezin), Elgir (Eliyê Mezin, Awgir (Abuzerê Mezin), Hemgir (Hemzeyê Mezin/Mihemedê Mezin), Hez(s)gir (Hesenê Mezin), Hiz(s)gir (Hisênê Mezin) û hwd. Wate û bawerî ew e ku ew zarokê ku çêbûye dê wekî yên berî xwe zû nemire, ew ê bibe zarokê "gir" ango mezin û li pey wî/wê jî dê zarokên wan çêbibin û namirin.[158]

**Heyî**: Ducanî bûn. Piştî ku hate fêmkirin ku dayik ducanî ye, ji bo vê rewşa nû ya jinan têgeha "heyî" tê bikaranîn.[159] Ango "Tiştek bi jinê re heye." Heyî, têgeheke mecaz, nazik û watedar e.

**Loqme:** Peyveke bi zimanê Erebî ye lêbelê di Tirkî û devoka Kurmancî ya Kurdiya ya Semsûrê de jî tê bikaranîn. Wateya wê ya ferhengî ew xwarin e ku mirov bi carekê ve bikaribe daqurtîne. Lê di nav bawermendan de -piranî jî di nav kesên ku baweriya wan bi mezheba Elewîtiyê heye û girêdayî vê mezhebê ne de- wateyeke gelekî fireh hildigire. Loqme, ew xwarin e ku mirov -berî yan jî piştî bicihhatina mirazêkî- xêra xwe belav dike. Carinan şîva bilxur (dan) e, carinan mirîşkek e û carinan jî pezek an jî dewarek e ku hatiye serjêkirin, pijandin û bêyî pere hatiye belavkirin. Li gorî derfetan her tiştê xwarin e dibe wekî loqme were belavkirin. Tiştê ku tê belavkirin -çi dibe bila bibe- ji bo rizayê Xwedê ye. Bi belavkirina vî loqmeyî kes dixwazin dilê Xwedê her weha yê Êrik yan "Qencê Xwedê" xweş bikin. Wekî spasiyekê ye. Loqme li gorî dem û derfetan li mal tê çêkirin û li malen li taxê tê belavkirin. Carinan jî li ber êrikekî, ziyaretekê tê amadekirin û mirov têne vexwendin. Di rê û resmên cemê de şêraniyek e (wekî gûz, bastêq, mewîj) an jî pariyek nan e li "canên cemê" tê belavkirin. Nîşana parvekirin û wekheviyê ye.[160]

Çiralix: Ji peyva "çira-çerax" ya Kurdî-Farisî û ji qertafa "-lik" ya Tirkî saz bûye. Berî ku lampe û ceyran bê îcadkirin gel, ji bo ronahiyê çire/çira bi kar dianî. Rê û resmên olî (cem-zikir

---

158 Jêder: 5, 16, 20, 21, 44, 50.

159 Jêder: 1, 4, 33, 34, 58.

160 Jêder: 4, 5, 6, 9, 14, 17, 18.

û hwd.) li ber ronahiya çireyê dihatin pêkanîn. Endamên vê civaka bawermend dema ku diçûn cem, zikir û sohbetê bi xwe re çira dibirin. Piştre hin kesan, ji dêvila çirayan hinek pere yan jî têkberên din dibexişand berpirsyarên ayînan da ku bi wî pereyî yan jî têkberî çira bêne kirîn. Ji bo ku diyar nebe bexşîş çiqas e qûtiyeke qûflekirî tê çêkirin. Her kesê ku serî li ziyaretê dide bi qasî ku ji dilê wan hatiye bexşîşê diavêje vê qûtiyê. Digel ku îro li gelek cihên pîroz ceyran heye jî ev kevneşopî didome. Berpirsyar û parazvanên van tirbe û ziyaretan bi wan bexşîşan pêdiviyên cihê ayîn û ziyaretê bi cih tînin. Heger tiştek lê zêde bibe jî parazvan û peywirdarên ziyaretê pê debara xwe dikin. Bi taybetî di çand û mezheba Elewîtiyê de çiralix wekî tiştekî pîroz û pêwîst tê pejirandin.[161]

**Ji êmzikê ketin:** Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de ji wê damara ku di malzaroka dayikê de dê û zarokê bi hev ve girê dide re dibêjin êmzik.[162] Piştî ku zarok çêbû ji êmzikê re dibêjin "navik". Bawerî ew e ku heger jina ducanî karekî giran bike yan ji ciheki bilind xwe biavêje xwarê dê zarokê di zikê diya xwe de ji êmzikê biqete û bimire.[163]

**Pêşbêli:** Li dewsa peyva "fal"ê tê bikaranîn. Peyveke xwerû Kurdî ye. Gelek cureyên pêşbêlikirinê hene.[164]

**Nîvçe:** Ji zarokê ku bi saxî û silametî nehatiye dinyayê re tê gotin. Ev zarokên weha piranî di nav çend heyvên pêşî de di zikê diya xwe de dimirin.[165] Car caran jî tên dinyayê lê astengdar in. Di nav çend rojan de dimirin. Lewra lebatên wan ne temam in.

**Paşilî, Zêristanî, Dergûşî:** Ev her sê têgeh ji bo dayikan tên bikaranîn. Pêvajoya çêbûna zarokan û heta serdema ji şîrqetîna wan diyar dikin. Ji jina ducanî re "paşilî", ji jina ku nû zarok aniye re "zêristanî"; ji jina ku zarokê xwe dimêjîne re jî "dergûşî" tê gotin. Serdema paşiliyê nêzîkî neh meh û deh rojan; serdema zêristaniyê çil rojî û serdema dergûşiyê jî heta ku zarok ji şîr

161 Jêder: 5, 18, 20, 24, 31, 55, 70, 76.
162 Jêder: 19, 44, 82.
163 Jêder: 5, 8, 14, 19.
164 Jêder: 14, 15, 23, 30.
165 Jêder: 1, 2, 7, 8, 16.

qetiyaye (nêzîkî du salan) diajo.[166]

**Qoçkirin:** Piştî ku zarok çêbû, bi alîkariya hin kesên ku di dema zayînê de li ba dayikê ne (wekî pîrik, dayik, xwesî, xwîşk û hwd.) zarok hînî şîrmijandinê dibe. Ji bo cara pêşî ya vê tecrûbeyê têgeha "qoçkirin"ê tê bikaranîn.[167] Jineke xwedîtecrûbe pêçekê digre û dide ber pêsîra dayikê. Serê pêsîra dayikê dixe devê zarok û wî/ê hînî mijandina şîr dike.

166 Jêder: 2, 5, 8, 19, 20, 78, 132, 145.
167 Jêder: 4, 6, 14, 52.

# BEŞA DUYEMÎN
# LI SEMSÛRÊ BAWERÎ Û PÊKANÎNÊN BIJÎŞKIYA GELÊRÎ

## LI GORÎ SERDEMÊN JIYANÊ

Folklornasên bi nav û deng ên wekî Orhan Acıpayamlı[168], Sedat Veyis Örnek[169], Pertev Naili Boratav[170] û Erman Altun[171] serdemên jiyanê yên welidîn, zewicandin û mirinê wekî *"Serdemên Derbasbûyînê"* penase dikin. Ev serdem jî di nav xwe de, çend binbeş in. Di her serdemê de gelek sepanên kevneşopî, rîtuelî û olî hene. Di van serdeman de gel li gor divêtî û qalibên çanda xwe, li gor pîvanên kevneşopiyan tev digerin. Armanca hemû pêkanînan ew e ku di serdemên *"derbasbûyînê"* de rewşa ferdan were diyarkirin. Endamên civakê bi gelek pêkanînan tên pîrozkirin û pîrozandin. Di heman wextê de armanc parastina

168 Orhan Acıpayamlı, *Türkiye'de Doğumla İlgili İnanmaların Etimolojik Etüdü*, Türk Tarih Kurumu Basımevi, Ankara 1961.
169 Sedat Veyis Örnek, *Sivas ve Çevresinde Hayatın Çeşitli Safhalarıyla İlgin Bâtıl İnançların ve Büyüsel İşlemlerin Etnolojik Etüdü*, Ankara Üniversitesi DTCF Yayınları, Ankara 1966, r. 55.
170 Pertev Naili Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*, r. 194.
171 Erman Altun, *Türk Halkbilimi*, Karahan Kitabevi, Adana 2011.

endamên civakê ya ji xetereyan û tiştên xeternak e.

Serdemên welidîn, zewicandin û mirinê ji bo mirovan tê wateya derbasbûna ji statuyekê ber bi statuyeke din e.[172] Wekî serdema ji pitikbûyînê ber bi zarokbûnê ve; ji zarokbûnê ber bi kamilbûnê ve û hwd. Ev rîtuel, ji dêvla rola berê ya ferd, destpêka rolên nû ye. Bi awayekî dîtir, dûrketin û xerîbbûna ji bo rolên berê di xwe de dihewîne. Her gava nû ku tê avêtin, gavên berê dide jibîrkirin. Ji xeynî van serdemên derbasbûyînê, di dema destpêkirina pîşeyekê, endamtiya ji bo komekê û hwd. de jî rîtuelên cihê pêk tên.[173] Lê ji ber ku ev tişt derî xebata me ne, em ê li ser wan hûr nebin.

Berdewamiya nifşên mirovan, girêdayî zêdebûna wan e. Loma mirov, tim û tim ji bo berdewamiya nifşê xwe tev digere. Gava zewiciye, xwestiye ku zarokên wî/ê çêbibin. Gava dîtiye zarok çênabin serî li rê û rêbazên bijîşkiya gelêrî daye. Gava jin ducanî bûye, ji bo berdewamiya ducanîbûnê hin tevdîr girtine. Piştî çêbûna zarok, ji bo ku zarok û dayika wî ji nexweşînan bên parastin -heger nexweş ketibin jî demeke zûtir de baş bibin- tim di nav hewlanan de bûye. Di vê serdemê de zarok bê zar û ziman in, loma jî gava nexweş dikevin nikarin derdê xwe bibêjin û xwe biparêzin. Ji bo zarok ji *"mêrdezime"* (taya çilîtiyê), ji heywanên dirinde û sermayê bên parastin serî li rê û rêbazên bijîşkiya gelêrî tê dayîn. Armanc, başbûn û temendirêjiya zarok e.[174]

Piştî ku zarok dikemile, serdemeke nû ya derbasbûyînê dest pê dike. Navê vê serdemê zewac e. Di vê serdemê de ferd, li gor zarokatiyê hîn baştir e. Serdema zewicandinê, pêvajoyeke civakî ye û merheleyên wê yên cur bi cur hene. Rê û resmên wekî naskirin, lihevkirin, xwazgînî, qelen, nîşan, hine û dawetê hene. Di vê serdemê de jî car heye sûd ji rêbazên bijîşkiya gelêrî

---

172 Yılmaz Yeşil, "Türk Dünyası'nda Geçiş Dönemi Ritüelleri Üzerine Tespitler", *21. Yüzyılda Eğitim ve Toplum*, 2014; 3 (9), r. 119.

173 William Bascom, "Mit-Ritüel Teori", Selcan Gürçayır (Çev.), *Halkbiliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 3* (r. 189-216), Geleneksel Yay., Ankara 2009.

174 Sevgi Şar;"İç Anadolu Bölgesi Halk İlaçları", *III. Milletlerarası Türk Folklor Kongresi Bildirileri, IV. Cilt, Gelenek, Görenek, İnançlar*, Başbakanlık Basımevi, Ankara 1987, r. 371-380.

tê wergirtin.

Mirov, di her wextê de dibe ku bi pirsgirêkên tenduristiyê re rû bi rû bimîne. Ji van nexweşînan hin jê birîndarbûn, tehlbûn, şikestin hwd. in. Hin pirsgirêk jî ên dema welidînê ne. Li gorî serdema jiyanê û rewşa nexweşînê rêbazên bijîşkiya gelêrî jî diguherin. Di vê guhertinê de rewşa hawirdora civakî ya nexweş û nexweşînê jî bi bandor e. Bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê, di dermankirina nexweşînan de sûdê ji nebat, xwarin, kan, nistî û nivîştan digire.

Mirin, serdema dawî ya mirovan e. Tirsa mirinê, xema herî mezin a mirovan e. Her çend tê zanîn mirin tiştekî jênerevîn e jî, mirov ji bo pêşî li mirinê bigrin an jî dema mirinê paşve bidin tim û tim di nav lêgerînekê de ne. Pêkanînên bijîşkiya gelêrî yên derbarê mirinê de, gava rewşa nexweş giran dibe dest pê dikin û piştî mirinê jî bi awayê şûştina mirî, veşartin û definkirina mirî didomin.

## ÇÊBÛN

Ji bo berdewamiya nifşên mirovatiyê pêdivî bi anîna zarokan ya ser rûyê erdê heye. Çêbûn, ji aliyê zêdebûna hejmara endamên malbatê, hêz û hevkariya endamên malbatê ve girîng e. Bi taybetî di nav civakên paşdemayî û kevneperest de hejmara kesan hêza malbatê diyar dike. Bi taybetî jî hejmara mêran.[175] Lêbelê anîna zarokan di nav her civakê de bi hin rê û rêgezan ve hatiye girêdan. Berî ku zarok bê rûyê erdê divê bi hin rê û resman ew daxwaz û hêvî (niyet) ji civakê re -bi awayekî- were eşkerekirin. Bi vî rengî pêvajoya zewacê bi serî dibe û êdî jin dikare ji mêrê xwe ducanî bibe û zarok/an bîne. Ji xeynî vê yekê ducanîbûna jinan ji aliyê malbat û civakê ve nayê pejirandin.

Li Rojhilata Navîn û Anadolê, bi taybetî jî li ser erdnîgariya Kurdistanê heta niha gelek şer û pevçûn ji ber pirsgirêkên "namûs"ê derketine û jin di serî de, gelek kes di vê rê de hatine

175 T.C. Kültür ve Turizm Bakanlığı Araştırma ve Eğitim Genel Müdürlüğü, *Gelenek, Görenek ve İnançlar*, 2018, http://aregem.kulturturizm.gov.tr/TR-12692/dogum.html (01.10.2018).

kuştin. Peyva "namûs"ê bi eslê xwe ji zimanê Yewnaniya kevin e û di wateya "desthilatî", "zagon" û "rêzik"an de hatiye bikaranîn.[176] Li herêma Rojhilata Navîn û Kurdistanê, peyva namûsê wateyeke din hildaye û wekî "tevgerên jinan yên dersincî, zayendî û zayendperestî" hatiye bikaranîn. Ji ber vê pirsgirêka "namûs"ê, gelek dozên xwînê dest pê kirine û bi salan dijminatî di navbera malbat û eşîran de çêbûye. Gelek kes ji ber vê sedemê koçber bûne, mal û milkên wan hatine wêrankirin û talankirin.

## Pêkanînên ji bo ducanînebûnê û jiberbirina zarokan

Di serdemên berê de hin şivanan bi rêya çavdêriyên xwe têgihiştine ku sewal piştî xwarina hin cureyên giyayan stewr dimînin. Ji van çavdêriyan, ramana gelo mirov dikare riwekan ji bo ducanînebûnê yan jî ducanîbûnê bi kar bîne derketiye holê.[177] Mirovan, ji bo kontrolkirina rewşa ducanîbûnê dest bi bikaranîna riwekan kiriye. Digel hemû xetereyan û tundiya kevneşopiyan hin jin, -bi dilê xwe an jî bê dilê xwe û bêzewacheyî (ducanî) dimînin. Di rewşên weha de jin, ji bo ku -berî ku hin pê bihesin- ji zarok xelas bibin, hewl didin ku zarok nîvçe bibe; ji ber biçe û bimire.

Ji ber ku mijareke gelekî nazik û xeternak e, gelek jêderan nexwest ku di vê mijarê de bipeyive û rastiya civakê di şexsê hin kesan de eşkere bike. Digel vê yekê, hin jêderên jin hemû wêrekiya xwe pêçan û hin agahî dan me. Ji bo ewlehiya jinan û pergala civakê navê mexdûrên van bûyeran nehatiye eşkerekirin. Me jî ev agahî berhev kirin, li bêjingê xistin û şîrove kir. Li gorî van agahiyan hin rêbazên jiberbirina zarokan bi kurtî weha ne:

Jinên ku bêhemdî heyî mane, dixwazin -bêyî ku kes pê bihese- li çareya serê xwe binêrin. Ji bo vê yekê jî çi karê giran

176 Mesude Altunel, "Namus", *Ankara Barosu Dergisi*, 2012; 1 (1), r. 213.

177 Baki Umutcan Kuloğlu, Çağrı Cansu, Denizhan Kılıç, Seçkin Aydın, Zeynep Önel, "Geçmişten Günümüze Doğum Kontrol Yöntemleri", http://tip.baskent.edu.tr/kw/upload/464/dosyalar/cg/sempozyum/ogrsmpzsnm14/14.P6.pdf (08.09.2018).

hebe dikin: Wekî rakirina barên giran û hwd. Xwe ji deverên bilind (dar, dîwar, latû kevir, kortal û hwd.) diavêjin xwarê. Dikevin nava ava sar û qerisî. Lewra, jin dizanin ku heger rewşa heyîbûnê eşkere bibe dê bobelatên mezin bên serê wan û her weha kesên derdora wan. Pîrikeke ku hekîmtiya karê jiberbirina zarokan dike, di vê mijarê de serpêhatiyek xwe weha got:

> "Jinek heye, ez navî wê nawêm. Hat cem min got, ha û ha bû. 'Go: Mi perê mirîşkan di xa ra kir, mi xa da ber sermê, mi kevirên giran dan ber hemêza xa. Min çi kir, heyî li ber min neçû. Paşê Xwedê kir ku bi xa çû.' Hiro her tişt qolay bûye. Bi dizi diherin tixtor û tên. Mêrê wan jî pê nahese."[178]

Li gorî vê agahiyê jin, ji bo ku zarok ji ber here, baskê dîk û mirîşkan di malzaroka xwe re dikin da ku xwînî bibin. Xwe didin ber sermayê yan xwe ji deverên bilind davêjin xwarê. Wekî ku ji axaftinên jêderê jî tê fêmkirin, heyîbûna bêzewac, di nav civakê de rewşeke qedexe û gelekî xeternak e. Di rewşa îro de pîrik û hekîmên dermanên Kurmancî/Kurdewarî van rêbazan pêşniyar nakin. Pêşniyar ew e ku serî li nexweşxane û tiba modern bidin.[179]

Li herêma Qers û Îdirê, ji bo ku zarok nîvçe bibe qaşilên pîvazan dikelînin û ava wê vedixwin. Riwekên wekî çaya çiyê, gezgezk û pelhewês tên kelandin û ava wan tê vexwarin; hine û rûnê zeytê li hev dixin û vedixwin.[180]

## Pêkanînên ji bo ducanîbûnê

Li her devera dinyayê ku mirov lê dijîn, ji bo ducanîbûnê pêkanînên rengîn ên bijîşkiya gelêrî hene. Wek mînak, di pirtûkeke bi navê "Kîtabu'l-Mûhîmmat" de ya ku di sedsala XVan de hatiye nivîsîn ji bo ducanîbûnê pêşniyara vexwarina şîrê

---

178 Jêder: 20.

179 Jêder: 16, 18, 19, 27.

180 Kürşat Öncül, *Kuzeydoğu Anadolu Bölgesi Halk Hekimliği (Kars/Iğdır)*, Kafkas Üniversitesi Türk Halkbilimi Uygulama ve Araştırma Merkezi Yayınları, Kars 2011, r. 80.

bergîran heye.[181] Dîsa di pirtûka Balî Efendî (m. 1573) ya bi navê "Terceme-î Aynû'l Hayat" de ji derbarê ducanîbûnê de ayetek tê xwendin û weha tê gotin:

> "Ev ayeta han, ji bo ducanîmayînê û parastina zarokê ya di malzaroka diya xwe de ye. Heçî kesê ku dixwaze ducanî bimîne bila vê ayetê li ser heft pelên kulîlka şadokan binivîse, piştre ji jina xwe re bêje 'Van pelan li ser hev daqurtîne' û piştî her pelekî hinek şîrê çêlekan (mange) bi ser de bide vexwartin. Bila sê rojan li ser hev vê yekê dubare bike. Bi destûra Xwedê ew jin dê ducanî bimîne."[182]

Li herêma Semsûrê jî gelek pêkanîn û baweriyên cihêreng hene. Ew bawerî û pêkanîn berî ku zarok were ser rûyê dinyayê di serdema ducanîbûnê de dest pê dikin. Di van pêkanîn û baweriyan de du armancên sereke hene: Yek ji wan bandorkirina li ser kesayetî û zayenda zarok e. Ya din jî parastina zarok ya ji nexweşî û bêyomiyan e. Helbet pêkanîn, li ser daxwaza dê û bavan û mezinên malê dest pê dikin. Ew malbatên ku zarokên wan çênabin an jî dereng çêdibin, ji bo ku bibin xwediyê zarokekî an jî zarokan serî li gelek pêkanînan didin. Ew rêbaz bi piranî li ser bûkê ango namzeta dayikê têne pêkanîn. Ji bo ku bûk ducanî bibe divê berî her tiştî tenduristiya bûkê û zavê li cih be. Ji bo vê yekê jî xwarinên herî baş û hêja didin ber bûk û zava. Ji xeynî xweyîkirina bûk û zava ya bi xwarinên baş, hin pêkanînên din jî hene. Bûk û zava, gelek caran jî xwesî, ji bo ku bigihêjin armanca xwe serî mela û "aqilmendên civakê" didin. Di sedsala 18an de Mela Mehemed Qûtup, ji kesên ku serî li wî dane re hin pêşniyaran dike:

> "Zirava kêrvoşkê û gûlyaxê bixne nêv pembû da, bi xwe ra hilînî heta sê rojan û her roj biçî nivînê, hamîle dibî."

181 Doğan, "XIV.-XV. Yüzyıl Türkçe Tıp Metinlerinde Halk Hekimliği İzleri", r. 125.
182 Sibel Murad, "Terceme-i Aynü'l-Hayat'ta Halk Hekimliğine Dair Bulgular", *TÜRÜK Uluslararası Dil, Edebiyat ve Halkbilimi Araştırmaları Dergisi*, 2014; 2 (4), r. 304.

Di sedsala XVIIIan de Mela Mehemed Qûtup (Melayê Erwasî), dermanekî ku ji ava gulan û zirava kîvroşkan tê amadekirin pêşniyar dike. Divê ev derman sê rojan li ser malzaroka pîrekê bê bikaranîn û her roj jî jin here bal mêrê xwe û bi wî re bikeve têkiliya zayendî.[183] Wekî ku ji rêzikên Mela Mehemed Qûtup jî tê fêmkirin, ji bo ducanîbûnê ji dermanan, riwekan û sewalan sûd hatiye wergirtin. Li herêma Semsûrê îro jî pêkanînên nêzîkî yê Mela didomin. Em van pêkanînan dikarin weha bi rêz bikin:

- Jinên ku zarokên wan çênabin diherin cem pîrikan[184]. Pîrik, hin dermanan ji wan re amade dikin. Dûtixê (lebata zayendê) wan bi pêçiyan vedikin. Dermanên Kurmanciyê, ku ji nebat, kan û hilberînên sewalî têne çêkirin, didin ber wan.[185]

Li gundên Kolikê, ji jina ducanî re dibêjin "bi halekî" ye. Berê wekî kevneşopiyekê, ji bo ku jina bi halekî pitika wê ji ber neçe, nîvçe nebe, "benê hecaciyan" dixistin stûyê xwe. Wisa bawer dikirin ku ew ben dê pitika wan biparêze. Li her taxê li hin malan ew ben dihate dîtin. Wekî malê hevpar ê civakê bû.[186]

- Pîrik lebata zayêndê ya jinê muayene dikin. Li gorî zanîn û baweriya wan, heger devê lebata wan ya zayendî teng be, pîrik bi cilêtê dibire û hinekî fireh dike. Her ku jin diçe destavê, cihê birînê jî dikewe. Piştre, hêkekê dixe zayenda wan heta jin diçe bal mêrê xwe ve. Wê gavê hêkê derdixe û bi mêrê xwe re dikeve têkiliya zayendî.[187]

- Ji bo ku jin ducanî bibe divê jin -ji xeynî pêkanînên ku li jor hatine eşkerekirin- parêzê jî bigre. Di vê pêvajoyê de, xwarinên tirş û tûj nexwe; sermayê negire.[188]

Pîrik, ji destpêka ducanîbûnê heta zayînê pêvajoya ducanî-bûnê dişopîne û heger pêwîstiyê pê bibîne hin pêkanînên din jî

---

183 Calînosê Hekîm, Mela Mehemed Qûtup, *Dermanên Bijîşkiya Gelêrî*, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2000, r. 40.

184 **Pîrik**: Jina ku bijîşkiya gelêrî dike, dermanên Kurmancî amade dike û her weha di dema bûyîna zarokan de ji dayikê re dibe alîkar.

185 Jêder: 1, 20.

186 Jêder: 88, 97, 100, 109.

187 Jêder: 20, 24.

188 Jêder: 4, 16, 20.

bi cih tîne. Yek ji wan pîrikan tecrûbeya xwe weha parve dike:

> "Ku cihê wan teng bû, mi bi cîlatê dibirî, hêk dixist şûnê, heta ku çûye cem mêrê xa. Wê çaxê, ew hêka xwe derdixist, diçû emrê Xwedê. Me digot, tiştî tirş mexwe, tûj mexwe, sermayê mexwe. Ez jê dikim, her ku çû mîzê, dikewe. Heger jin bi heyî we, şûnê pitê nê rast we, ez bi desta yawiş yawiş rast dikim. Ez wî bi cih dikim. Lingê jinan jî didin cîkî bilind. Ku cihî kurik neyî xaş we, dilî kurika diskine, solix li wan qut diwe. Ku ez şûnê wan rast dikim, kurik deh deqa di şûnê xwe de heldifire. Ku kurik miriwe ez tê derdixim. Ku şûnê kurika neyî rast we, dixtor diwên ka em amelat bikin. Têne ba min, ez wan bi desta rast dikim. Kurikî wan temam diwe. Çel sal e ez vî îşî dikim. Kurikên ku bi liv dikevin (sê-çar mehî) ez zanim ku miriye an sax e"[189].

Li herêma rojavayê Semsûrê di vê mijarê de pêkanînên cihê jî hene. Qudret Kapıcı ku bi nasnav "Qudê" tê nasîn, di vê mijarê pîrikeke "pispor" e. Heta niha gelek kesan serî li wê daye. Pêkanînên ku wê salix dane gelek in. Qudê, bi carekê ve hemû rêbazên ku li ser pîrekan ceribandine rêz dike. Hin ji wan rêbazan û pêkanînan li herêmên din jî hatine bikaranîn:

> "Ê ku kurikên wan nediwûn? Diwirin êş, av diavêtin ser çavên xa, paşila xa, lingên xa. Bi paşil diwûn. Ku fayde nedikir, dihatin cem mi: Mi li wan re digo: 'şîr bikelînin, vexwin; kundiran bekelînin, bixwin; bexdenûzê di şîr de bikelînin, hewik ard jî tevlê bikin, bidin ber xa (zayendê). Ku zarok nediwûn, ka dikelandin, di nav de rûdiniştin û cilikek diavêtin ser xa. Sewê ku xwi bidin. Paşê radiwû dikete nav ciya. (Bi germi diçû cem mêrê xa.). Paşê kurikê wan çêdiwû."[190]

Heger dermanên ku bi rêbazên bijîşkiya gelêrî têne bikaranîn sûd jê neyê wergirtin, jin serî li çareseriyên din didin. Wekî mînak, diçin ba melayan. Mela ji bo wan berbejnan çêdikin. Di wan berbejnan de ayetên Quranê hene. Mela, bi qasî bejna

---

189 Jêder: 23.
190 Jêder: 20.

zarokekî an jî bejna jina ku daxwaz kiriye berbejnekê çêdikin. Lewma jê re dibêjin berbejin. Jêdereke ku zarokên wê tunebûne serpêhatiya xwe ya derbarê berbejnê de weha dibêje:

> "Kurikê min nediwûn. Gotin, here mala Hecî Ayzer Bawa, bira te ra berbejnikê çêke. Ez û xasiya xa ya rahmetî çûn ba. Xetik zirav û dirêj e, bi qasî dirêjiya meriyekî ye. Ê tiji yaziya Erewî ye. Gi diya ne. Ew xeta aha (bi destan nîşan dide) rindik pêça, qat kir, kir nav naylonkî, dîsa qat kir û vê carê kir nav paçkî temîz û da dest min. Go 'Bere bin balîvê xa ke ya jî bi benekî ve girêde, bike histî xa. Niha yekî li Çarşiyê ye. Li henda Parçacî Bazariyê ye, ew çêdike."[191]

Her kesekî ku li hêviya zarok/an e lêbelê zarokên wan çênebûne serî li rêbazeke din dide. Ew rêbaz li gorî herêmê, li gorî zanîn û baweriya kesan diguhere. Di mijarên weha girîng de berê bûk û zava li gorî zanîna xwe dimeşin. Lêbelê piştî ku nagihêjin armanca xwe, serî li kesên ku baweriya wan pê tê didin. Lewra bi giştî li herêma Rojhilata Navîn bi taybetî jî li herêma Semsûrê nebûna zarokan ji bo dê û bavan, her weha ji bo malbat û eşîrê wekî şermekê û kêmasiyekê tê dîtin. Gelek bûk û zavayên ku zarokên wan çênabin, berî ku serî li bijîşk û nexweşxaneyan bidin, diherin ber êrik û ziyaretan. Yek ji wan Ziyareta Kêvir e. Ew ziyaret li gundê Sûsanê yê nêzîkî navçeya Kolikê/Gexte ye. Kesên ku zarokên wan çênabin an jî zarokê wan çêdibin lê piştî zayînê bi heta demeke kin dimirin, diçin ber Ziyareta Kêvir. Li wir kevirekî qul heye û hefsarê mangeyan (çêlekan) pêve girêdayî ye. Wî hefsarî dikin sitûyê xwe û heft caran li dora wî kevirî dizivirin. Wateya vî hefsarî ev e:

*"Min mezinantiya te qebûl kir. Te ez kirim hemû deraxan (her halê xerab û teng). Tenê mirazê min bike, ez ê bibim dewar jî."*[192]

Piştî vê pêkanînê heger ku zarokê wan çêbibe navê wê ziyaretê (Gir) li navê zarokên xwe zêde dikin. Wekî Awgir (Abuzer), Zêwgir (Zelîxa), Hemgir (Hemze yan Mihemed), Xangir (Xanim) û hwd. Jêdereke ku keçika xwe biriye ber wê ziyaretê serpêhatiya

191 Jêder: 117.

192 Jêder: 12, 18, 20, 45, 81, 84.

xwe weha vedibêje:

> "Sewê ku kurikê wan heyî (hemîle) biwe, mi Qedîma me bir wir, ber Ziyareta Kêvir. Me hefsar kir histi. Ev keçika wan lê ra ma. Ê berî wê gi mirin. Heft bûn."[193]

Di dema serdana pêşî de xwarineke piçûk ku jê re "loqme" dibêjin, dibin ber vê ziyaretê. Carinan ev serdan dubare, sêbare jî dibe. Gelek caran tenê bûk û yek yan du nasên wê diçin ber ziyaretê. Ew serdan bi dizî çêdibe. Piştî ku mirazê wan çêbû ango zarokekî wan çêbû vê carê bang li hemû dost û nasên xwe dikin, hemûyan vedixwînin ber ziyaretê. Qurbanekê (li gorî derfetên aborî û soza ku dane, mirîşk, pez an jî dewar dibe) dibin ber wê ziyaretê û li wir serjê dikin, dikin xwarin û belav dikin. Ji Ziyareta Kêvir re malavahiyan dikin. Ev serdan piranî roja înê tê kirin. Lewra roja înê li gorî misilmanan rojeke pîroz e[194].

Tiştetî din ê balkêş jî ev e ku sewalan (hesp, hêstir, ker, çêlek û hwd.) jî dibin ber Ziyareta Kêvir. Ji bo ku kedî bikin, hefsêr dixin stûyê wan. Wekî gelek pêkanînên din ên bijîşkiya gelêrî, bawerî lê pêşiya her tiştî tê. Jêder vê baweriya xwe weha tîne ziman:

> "Serê her tîştî înakirin e. Diwên, 'Keviro mirazê min kiro!' Çûne ber kêvir, diya kirine; Kurikê wan çêbûye. Niha înakirin kêm bûye. Loma dinê xira diwe."

Jêder Süleyman Taşçı, di vê mijarê de girîngiya baweriya bi Xwedê tîne rojevê. Gazinên xwe jî ji mirovên vê demê dike û dibêje, heger bawerî bi Xwedê hebe û mirov hêviya xwe ji Xwedê nebire her tişt dibe.[195]

Li gorî jêderan nîşanên ducanîbûnê hene. Rojên "nexweşiya" jinan derbas dibin; dilê wan li hev dikeve; dilê wan xwarinên tirş û şêrîn dixwaze û hwd. Li gorî çavdêriyên jinên jêder, ku mijarê de xwe wekî "pispor" dibînin, ji dûr ve xuya ye bê ka jinek ducanî ye yan na. Jinên ducanî, çavên wan dadikevin kûrahiyê, birûyên

193 Jêder: 9.
194 Jêder: 1, 2, 5, 13.
195 Jêder: 10.

her du çavan nêzîkî hev dibin û hwd. Heger dayik "nexweşiya" (dilxwestin) tiştên tirş û goşt bike dê lawikê wan çêbibe. Heger nexweşiya tiştên şêrîn bike dê keçikeke wan çêbibe.

> "Aha (bi destan nîşan dide), çavên xa dikevin êçi, kort diwin; her du biriyên xa cot diwin, digihên hevdi. Çavên xa hewikî xez diwin (hewikê zer diwin). Wekî di jî tim nexaşiya dikin. Ki î lawik we, ê tirşiyê û goşt; ki î keçik we jî ê şîraniya û datliya bixaze."[196]

Jinên jêder, bi zayenda zarokê heyî jî dizanin.

> "Ku kurik lawik we, hîn ku î di zikî diyê xa da bi qasî nokekê ye ez fahm dikim. Ku bi qasî çavê dewarekî bû, zanim ku keçik e ya jî lawik e. Keçik ê nerm in; lawik ê hişk in."[197]

Li hin gundên Semsûrê jin, ji bo ku ducanî bibin kaya genim dixin nav beroşeke kergê,[198] avê dixin ser û dikelînin. Piştre dema ku av şîrgermî bû bûkê di nav wê ava germ de didin rûniştandin û cilikeke kevin an jî lihêfekê pêwerdidin. Heta demeke dirêj bûk di nav wê ava germ û hilma ava germ de dimîne, xwîdan dide. Piştre bûk ji nav avê dertê û dikeve nav nivînên xwe, diçe bal mêrê xwe. Mebest ew e sermaya laşê bûkê bişkê û malzaroka wê nerm bibe.[199]

Li nav Semsûrê û derûdora wê, bi taybetî jî di nav civaka Elewiyan de, li ser tilsimên dedeyan gelek gotegot hene. Yek ji van dedeyan Ap Eziz e. Ap Ezîz, ji ocaxa Axûçan e. Navê Axûçan yê rastî Seyyîd Temîz e. Ew jî neviyê Seyyîd Loqman Perende ye. Ew jî neviyê Seyyîd Ebul Wefa ye. Ap Ezîz, li herêma Semsûrê dedeyekî bi nav û deng e. Li gorî civaka Elewî, Ap Ezîz *"Qencekî Xwedê ye û xwediyê gelek kirametan e. Ji malbata Ehlîbeytê ye û ji ocaxa Axûçan e."* Li gundê "Bilam" ê (Pinarbaşi) yê li ser navçeya Cêlika (Çelikan) hatiye dinê. Piştî demekê ji wir rabûye û gund bi

---

196 Jêder: 12.

197 Jêder: 20.

198 **Kerge**: Ev peyv li herêmê ji bo mahsereyê tê bikaranîn. Ji wan beroşên mezin re ku tê de şîre tê kelandin jî *"beroşa kergê"* tê gotin.

199 Jêder: 72, 77, 84, 90, 91.

gund geriyaye. Piştre li gundê Şexmîran (Yedioluk) bi cih bûye. Di sala 1966an de miriye û li ser wesiyeta wî li wî gundî, li ser girekî, hatiye veşartin. Niha her sal, di salvegera mirina Ap Ezîz de li ser gora wî bernameyên bibîranînê têne lidarxistin. Wekî din jî, di demên cihê de bi hezaran kes diçin ber gora wî ku niha wekî tirbeyeke kompleks hatiye sererastkirin. Li wir qurbanên ku hatine wedandin serjê dikin, loqmeyan belav dikin.[200] Li gorî gotegotên kesên ku Ap Ezîz dîtine, ew xwediyê gelek kerametan bûye. Yek ji wan weha ye:

> "Diwên roya ku ew miriye, di wexta veşartina wî de birayê wî Seydik Dede, lingî xa li tawutê wî xistiye û gotiye, tu diwê ‹Ez Dede me, de hunerên xa binimîne!' Di wê pêçê de meytê Dêde di şûnê da rawûyê bani û dîsa daketiye nav tawûtê. Diwên, Seydik Dede gotiye ‹Va newû, hindik e, êki di.› Vê carê erd hezizî ye, şev bûye ro û ro jî bûye şev. Seydik Dede gotiye, temam, vê carê bû."[201]

Jêder Azî Mendî Îmê, kerameteke din ya Ap Ezîzê weha vediguhêze:

> "Mendî Çûkê û Elî Zêwê çûn ku Ap Ezîzê bikujin, ku Ment çitol gêşt ber dêri Ap Ezîzê go, 'Rawe darê' û Mend şûna xa da hişk bû heta rûya di. Paşê go, 'Here!" û ew jî çû lê bela lê kêm newûn"
> "Ez û Elî me ve em tev diçûn ba Ap Ezîzê, rê da markî mîna ejdiyakî rast me hat. Me lêxist lêxist, me bi zorê ew mêrata kuşt. Me marê xa kuşt û da rê. Ku em gêştin ba Ap Ezîzê hîng me dengî xa nekiriwû, wî go, 'Werin berxikê min werin, mi serî wî girtiwû we jî li boçikê dêxist"[202].

Gelek kes di saxiya Ap Ezîzê de çûne bal wî û ji wî ji bo nexweşiyên xwe derman xwestine. Derbarê kerametên Ap Ezîzê de rîwayetek berbelav heye. Ev gotegot derbarê jineke ku zarokên

---

200 Necdet Tozlu, "Adıyaman Efsanelerini Tasnif Denemesi ve Bunlar Üzerine Bir Değerlendirme", *Selçuk Üniversitesi Edebiyat Fakültesi Dergisi*, 2011; 26.
201 Jêder: 6, 28, 41, 63, 133, 143.
202 Jêder: 71.

wê tunebûne de ye. Jêdera me vê gotegotê weha vedibêje:

> "Mesela, Ap Eyîz î hîn sax bûye jin çûne ba wî. Destê xwe di pişta wan daye, diya li wan re kirine. Dîwên jinik çûye ba Ay Eyîzê, hîn jinikê tiştik ne gotiye, Ap Eyîzê destê xwe pişta jinikê daye gotiye: 'Here keça min, înşalla Xadê ê mirazî te bike.' Diwên çend meh çûne jinik bi hemile bûye, pitê wê bûye. Mêzi kirine ku li ser piştê lêwik şûna pêçiyan heye."[203]

Piştî ku jin bi "heyî" bû ji bo ku zarok ji ber neçe, gelek pêkanînên bijîşkiya gelêrî bi kar tînin. Ji parastina zarok, berpirsyariya sereke ya dayikê ye. Bi taybetî pîrik an jî bijîşkên gelêrî aqilan didin jinan. Derbarê tiştên ku pêwîst e jina ducanî bike, bixwe û kiryarên ku divê jê dûr bimîne de hişyariyan didin.

> "Pîrikan, jinan li me ra digotin: Ningî xa bilind bikin, bidin dîwarekî û hewkê li bilindiyê biskinin. Digotin tiştî tirş bixwin; qorix bixwin. Tiştî giran ramekin. Xwe dirêjî tiştên bilind mekin. Guliyên daran ber bi xwe ve mekişînin. Digotin, ku kurik di êmzikê de bikeve, ew ê bimire. Êmzik, navika ku kurik bi diya xwe ve girêdide ye. Hêlik ê bi dê ve ye, hêlek jî ê bi kurik va ye."[204]

Li gorî bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê, divê jina ducanî bi tevdîr tevbigere. Xwarinên tirş ên wekî hersim, hilû û sêvên tirş bixwe. Heger xwe dirêjî şaxên daran bike û ber bi xwe ve bikişîne dê zarok ji ber here. Her weha divê giraniyê raneke; ji cihên bilind xwe neavêje xwarê. Heger van kiryarên xeternak bike dê zarok ji "êmzikê" bikeve.[205]

Li herêmên din pêkanînên cihê jî hatine bikaranîn. Wek mînak, li hin deverên Anadolê, ji bo ducanîbûna pîrekan "çihi" tê çêkirin. Çihi, ji benîştê çaman, hiriya neşûştî, zîça mirîşkan û kevirê goztaşî tê amadekirin. Ev çihiya li ser paçikekî şîn tê raxistin û pêçan. Serê wî paçikî ji bo ku neçe malzaroka jinê û piştre bi rihetî bê derxistin bi tayekî ve tê girêdan û di lebata

203 Jêder: 33.
204 Jêder: 13.
205 Jêder: 1, 22, 26, 29, 53.

zayendî ya jinê de tê bicihkirin. Serê din yê wî tayî jî bi derpêyê (binkiras) jinê ve tê girêdan. Wisa tê bawerkirin ku ew çihi dê hêdî hêdî bihele û here, di tamarên jinê de bigere û malzaroka jinê nerm bike. Heger jin piştî vê pêkanînê here nav cihê mêrê xwe dê heyî bibe.[206] Li Enqereyê, hestiyên kûçikan têne berhevkirin û kelandin. Ev kesa ku zarokên wê çênabin di nav ava wan hestiyan ya germ de rûdine. Bi betaniyekê jî tê pêçan. Heta ku baş xwîdan daye bi wî rengî dimîne. Mebest ew e ku damarên dayikbûnê vebin. Li hin deveran, balicanên reş, zîça mirîşkan, pîvazên xerab, cahtirî, gezo tê kelandin û jin li ber hilma wan tê rûniştandin. Li hin deveran, jî zîça mirîşkan tê berhevkirin û tevî kîloyek şîr tê kelandin. Dema ku tîr bû li ser paçikekî radixin û didin ber navrana pîrekan.[207]

Di nav Tirkên herêma Hazarê de, ji bo jina ku zarokên wê çênabin pezekî serjê dikin, digurin. Jin çermê wî pezî/ê li xwe dike. Pişik û hin lebatên din ên wî pezî ji bo nîvsaetekê didin ser zikê jinê. Jin heta ku baş xwîdan bide di nav wî çermî de dimîne. Wisa tê bawerkirin ku ew çerma dê damarên jinê veke û herikîna xwînê zêdetir bike. Bi vî rengî dê jin zûtir ducanî bibe. Carinan niviştan çêdikin. Jin wê niviştê dixe stûyê xwe û bi xwe re digerîne. Carinan jî diçin bal "Pîrejinên Hekîm" û "Pîrejinên Ocaxî", ew hin dermanan ji bo wan amade dikin.[208]

### Tawe

Kesên ku zarokên wan qet nabin an jî ji ber diçin, ji derveyî Semsûrê jî li çareseriyan geriyane. Tawe, hem navê nexweşiyekê ye hem jî navê ziyaretekê ye. Ev ziyaret li navçeya Rihayê, li Hewagê (Bozova) ye. Jinên ku zarokê wan qet çênabin. Yan jî jin ducanî dibe, zarok bi liv dikeve lêbelê jina ducanî di xew

206 Gülnaz Savran, "Adana Bölgesinden Derlenen Bazı Halk Tıbbi Uygulamalarının Tıbbi Antropoloji Açısından Değerlendirilmesi", http:turkoloji.cu.edu.tr, CUKUROVA, sempozyum, semp_3, savran.pdf (15.08.2018)

207 Temizsoylu, *Ankara'da Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Hacettepe Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Bölümü Türk Halkbilimi Anabilim Dalı, Ankara 2012, r. 78.

208 Yaşar Kalafat, *Kuzey Afganistan Türkleri*, Türk Dünyası Araştırma Vakfı Yayınları, İstanbul 1994.

de hin tiştan dibîne û ditirse. Bi wê tirsê re vedicinîqe, diqîre û şiyar dibe. Roja din zarokê wê ji ber diçe. Dema ku ev yek dubare dibe, jin diçin ber ziyareta Taweyê. Xwarinekê li wir çêdikin, dixwin û belav dikin. Di hundirê wê ziyaretê de dia dikin û şevekê radizên. Roja din vedigerin malê.[209]

Berpirsyarî û nobedariya wê ziyaretê di dest malbatekê de ye. Ji wê malbatê re "Ocaxa Tawê" dibêjin. Kesên ku diçin ber wê ziyaretê carinan şevekê di wê ziyaretê de radizên û diayan dikin. Piştre, çiralixekê dixin qutiya alîkariyê ya ziyaretê. Berpirsyarê ziyaretê jî wekî teberikekê morîkên reş didin kesa ku dixwaze ducanî bimîne. Wisa tê bawerkirin ku dê zarokên wan çêbibin. Li gorî jêderan bi heman navî li bajarên derdora Semsûrê jî ziyaret hene.

> "Ê ku kurikê wan nediwûn, diçûn ber ziyareta Tawê. Li Meletiyê û Meraşê jî ew ziyareta heye lê ê pirê diçûn Hewagê. Çi ku ê nîzik e. Diçûn wê derê, ew kurika dişûg nadikirin. Ocaxî li morikên reş dixûnin û dikirin destê jinê, sewê ku di histî xa ke. Te dî pit î hîn pê re ye."[210]

Li ser ziyareta Tawê jêdereke din weha dibêje:

> "Berê tixtor tinewûn, înakirin hewû. Di wexta me ra, em diçûn ber Tawê. Ê li Hewagê ye. Bekçiyê wê, torinê torinê wê ziyaretê ne. Me ra qapi vekir. Me li hefşê loqmê xwe kir, xwar, bela kir. Em wê şevê di ziyaretê de ramediyan. Wê û şûnde Xadê ew lawkî me da."[211]

Li gorî hin jêderan, "Tawe" jîndareke xêw e. Wekî xofekê ye. Çavê xwe li jinên ducanî û jinên ku zarokên wan ê piçûk hene digerîne. Ku keysê lê bibîne lê dixe, dikuje. *"Dermanê wê jî kesên ocax û dede ne. Tenê bi dia û nistiyên wan mirov dikare ji tawê xelas bibe."*

> "**Taw**, ê pirê pîs e. Ê hena hîn di zik de dimrin. Ê hena ku diwe

209 Jêder: 1, 22, 25, 59.
210 Jêder: 1.
211 Jêder: 9.

> û çend roya şûnda dimrin. Ê hena jî heta heft heyşt saliyê dimînin lê paşê dîsa dimrin. Dibêjin "Taw ê li ser e." Diwên, bira dedeyek were nêv li kurikan bike, sewê ku nemirin. Bang li ocaxekî dikin."[212]

Hin kes jî ji bo ku ji wê tirsê xelas bibin û zarokê wan ji ber wan neçin, serî li mela û niviştan didin. Li navenda Semsûrê endamên malbata Ocaxê Hecî Ayzer (Abuzer) Baba ji bo nexweşiyê niviştan û berbejnan çêdikin.

> "Jina bipaşil di xew de bi carkê va vedicinige. Em diherin mala Hecî Ayzer Bawa. Ocax e, li henda Kellecî Bazarî ye. Malikê, li min re xetik çêkir û heft derzî di wê xetê ra kirin. Go, bere mal, bide bin balîvê xa hînga ramede."[213]

Jinên ku pirsgirêka wan ya tirsê hene jî serî li mala wan didin. Endamê malbatê (niha kurê Hecî Abuzer Baba) diayan li ser kaxizekê dinivîse û heft derziyan di wê niviştê re dike. Jin wê niviştê dixin bin balîva xwe û radizên. Wisa tê bawerkirin ku dê êdî jin netirse û xewnereşan nebîne.

## Pêkanînên Derbarê Pêzanîna Zayenda Zarokan de

Piştî ku ducanîbûna jinan diyar dibe û pêve di serî de dê û bav, kal û pîr û endamên din yên malbatê zayenda zarokan meraq dikin. Ji bo ku berî bûyîna zarok, zayenda wan hîn bibin serî li rêbazan didin. Hin ji wan rêbazan tenê wekî baweriyên pûç in. Ji van baweriyên pûç çend jê weha ne:

Bi rasthatinê ji cihekî tizbiyê digrin û dest bi kişandinê dikin. Berî ku dest bi kişandinê bikin weha dibêjin, *"Em ê ji vir û pêve hebên mayî bijmêrin. Heger hejmara wan zo (cot) be zarokê we keçik e; heger fer (yek) be zarokê we lawik e."* Carinan jî berevajiya vê gotina li jor dibêjin û dijmêrin. Li gorî encama hejmara libên tizbiyê zayenda zarok diyar dikin.[214]

Hin kes jî diçin bal remildaran. Remildar, ji wan seriyekî

---

212 Jêder: 3, 14, 24.

213 Jêder: 8.

214 Jêder: 17, 32, 33, 42, 46.

pezan dixwaze. Piştî ku serî di beroşê de keliya goştê serî jê radikin, dimîne hestî. Remildar radihêje wî hestiyî û li ber çavên jina bipaşil dişkîne. Dike du welî (perçe), yekî dixe destê xwe û li nava wî dinihêre. Heger goşt ji nava wî dernekeve dê lawikekî jina bipaşil çêbibe.[215]

Hin rêbaz û pêkanîn hene ku di encama tecrûbeyan de derketine holê. Kesên meraqdar ji bo ku vê meraqa bibin der serî li mela, pîrik û kesên din didin. Pîrik û jin jî, li gorî tecrûbeyên xwe li tevger, çav û zikê jina ducanî dinihêrin û ramana xwe dibêjin. Carinan jî li zarokê ku nû çêbûyî dinihêrin û derbarê zayenda zarokê ku dê pişt wî bê de agahiyan didin:

> "Derin ba jina. Ew jinika li ber çavê jinê bipaşil mêzi dike. Ku mor be, kurikî wê dike bi lawik we. Hen jî diwên, 'Ku heniya kurikî ku bûyî wî mor be, kurikê ku li pey wî were jî ê lawik we'. Hunga îna dikin. Ki porî heniya wî berjor we, kurikê pê wî jî ê lawik we."[216]

Jêder Ş.P, di mijara têderxistina zayenda zarokan de bi xwe bawer e. Ew li navika jina ducanî dinihêre. Li gorî berê navikê (navik li jêr dinihêre yan jî li jor) zayenda zarokan diyar dike. Navê çend kesên ku hatine ba wê û wê jî zayenda zarokên wan berî ku çêbibin ji wan re gotiye rêz dike. Heger berê navika jina ducanî berjêr be ew ê keçikekê bîne; heger berjor be ew ê lawikekî bîne:

> "Ez zanim. Hen ên din jî zanin. Ku kurik sê-çar mehî we ez tê derdixim ka keçik e ya jî lawik e: Ku keçik be navikê diya xwe ê devjêr e; ku lawik we ê devjor e. Min telesî[217] kiriye. Dixwazî ban li van cîranên me bike. Mi zaniwû ku keçika wê dike biwe."[218]

Li herêmên din yê Tirkiyeyê jî pêkanînên cuda hene. Wek mînak, li bajarên Zonguldax û Bartinê, ji bo ku zayenda zarok

---

215 Jêder: 39, 41, 58, 147.

216 Jêder: 36.

217 **Telesî:** Ceribandin.

218 Jêder: 12.

diyar bikin bêyî ku jina ducanî bizane du êkmerdiyan[219] li erdê radixin. Kêrê didin bin yekê û meqesê jî didin bin a din. Bi hincetekê gazî jina ducanî dikin, dibêjin *'Ka were bîstekê ligel me rûne.'* Heger jina ducanî li ser êkmerdiya ku kêr di bin de ye rûne ew ê lawikekî bîne, heger li ser ya ku meqes di bin de ye rûne bawerî ew e ku jina ducanî dê keçikekê bîne.[220] Li herêma Behra Reş, bawerî ew e ku heger jina ducanî jar be dê keçikekê bîne; qelew be dê lawikekî bîne.[221]

## Pêkanînên Serdema Bûyîna Zarokan

Li gorî tecrûbe û baweriya civakê zarokek 9 heyv û 10 rojan di zikê diya xwe de dimîne, piştî wê tê ser rûyê dinyayê. Li gorî tiba nûjen ev pêvajo di navbera 38 hefteyan û 40 hefteyan de diguhere. Li gorî bawerî û tecrûbeya civakê zarokên keç bi qasî du hefteyan berî zarokên kur têne dinyayê.[222] Car caran ji ber hin sedemên rengîn çêbûna zarok "dereng" dikeve. Lê dîsa jî tiştekî ku bikin nîne. Li benda êşên zayînê yên jina ducanî dimînin. Dema ku êşan dest pê kir û av ji ranên jina ducanî hat pêvajoya zayînê dest pê dike. Di rewşên weha de ji bo hêsankirina zayînê, bi rêberiya *pîrik*an, hin amadekarî têne kirin. Çaviyek ango jureke (ode) malê ji bo vê bûyerê tê veqetandin. Heger derfet tunebin, ji bilî dayika ducanî, pîrikê û alîkarê pîrikê kesekî di hundir de nahêlin, hemû endamên malê ji malê dûr dixin. Hundir germ dikin, avê germ dikin, legan, tas û paçikan amade dikin. Di dema bûyîna zarokan de pîrik yan bijîşkên gelêrî alîkariya jina ducanî dikin.

---

219 **Êkmerdî**: Mînder.

220 Mualla Murat, *Zonguldak ve Bartın Çevrelerinde Halk Bilimi*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Gazi Üniversitesi SBE Türk Halk Edebiyatı Bilim Dalı, Ankara 2002, r. 30.

221 Şenol Sancak, Mehmet Alver, "Cinsiyet Tahminine Dayalı İnanış ve Uygulamalara Yönelik Bir Değerlendirme: Alman Kültürü ve Türk Kültüründe Karadeniz Örneği", *Karadeniz Araştırmaları Dergisi*, 2011; 3, r. 149.

222 Jêder: 26, 30, 49, 55, 69.

"Berê jî jinên zana hewûn. Li wan ra digotin "pîrik". Paçî piya[223] datanîn, av germ dikirin, hewik ava germ didan jina bipaşil. Jinik li ser wî paçî piya didan rûniştandin. Mal germ dikirin, sewê ku kurik û dê necemidin."[224]

Ji bo ku bûyîna zarok hêsantir bibe, pîrik zikê jina ducanî mist dide. Hêdîka destê xwe ji jor ber bi jêr ve didewisîne û zarok berjêr dehf dide. Bi destê jina ducanî digre û wê di hundir de digerîne. Ji bo ku rêya zarok vebe û fireh bibe bi rûnê zeytê navrana dayikê mist dide. Hinek şîrê germ, şerbeta dims û rûnê nivîşkî bi jinê dide vexwartin. Dema ku welidînê dest pê kir, tevî dayikê ew jî dest bi dia dikin:

"Sewê ku kurik çêbiwe jinekê bi destê jina paşil digirt û digerand. Dû ra, li orta odê cilikik kevin -sewê ku paşê biwin çeyn kin- radixistin. Jinik li ser piya diskinî. Jina bipaşil diket ser qulfîskan û bi destî jina li ser piya digirt. Pîrikê jî pê re ari dikir. Sewê ku kurik nekeve erdê. Bi wî avayî pit dihat dinê."[225]

Heger zarok li ser lingan were jiyana wî dikeve xetereyê. Divê berê serî derkeve derve. Ji bo vê yekê jî pîrik berî ku zarok derkeve- hîn ku di nav malzarokê de ye- bi destê xwe zikê jina ducanî mist didin û berê wî/ê rast dikin. Ev pêvajo ji nîv saetê zêdetir diajo.[226]

## *Pêkanînên derbarê birîna navikê û heval de*

Di dema bûyîna zarokan de hin pêkanîn hene ku ji bo tenduristiya zarok û dayikê gelekî girîng in. Yek ji van hatina zarok e. Heger berê serê zarok neyê der ango zarok li ser lingan were dinyayê gumana ku ew zarok bê hilm bimîne û bimire yan seqet bimîne gelekî heye. Lewra berî ku zarok were dinyayê bang

---

223 **Paçê Piya:** Ew paçik ango merşa kevin ku di dema bûyîna zarokan de dayik li ser rûdine. Ji ber ku di dema zayînê de ew paçik xwînî dibe û qirêjî dibe, piştî ku pêvajoya zayînê diqede ew paçik tê avêtin. Careke din nayê bikaranîn.

224 Jêder: 20.

225 Jêder: 34.

226 Jêder: 20, 23, 47, 83, 97, 131.

li pîrikê dikin. Pîrik tê û zikê jina ducanî dinihêre, dipalikîne. Heger zarok xwar be yan li ser lingan be, pîrik zikê jinê mist dide û bi destan berê zarok di zikê dê de diguherîne. Jêder B. Xaşikî di mijarê de "pispor" e. Li herêmê wekî pîrikeke navdar tê zanîn. Li gorî gotina wê ew ji çil salî zêdetir e ku vî karî dike. Heta niha di zayîna bi sedan jinî de alîkariya wan kiriye. Di vê mijarê de weha dibêje:

> "Ez lê dinihêrim ku cih teng e, zarok nikane derkeve, ez bi pozî cîlateke temîz rindik lêdikim. Pitê li ber digrim, navikê wî /ê bi cîlatê dibirim, girêdidim. Ku navik ket û şûnda pirtîsk rijî ya jî teniya êzinga dikim şûna navikê. Sewê ku kul newe."[227]

Jinên navsere, ji aliyê ducanîbûnê û anîna zarokan ve ji rêbazên jiyana nûjen û tiba nûjen bi gazin in. Li gorî wan, dermanên ku bijîşkên nexweşxaneyan wekî reçete dinivîsin û li dermanxaneyan têne kirîn, ne xwezayî ne. Jin, wan dermanan dixwin; xwezahiya laşê jinan xera dibe. Li gorî jinên pîr û navsere, *"Her ku jin zarokekî tînin dinyayê bedena wan xwe nû dike. Jinên niha zarokan kêm tînin lewma jî zû pîr dibin."* Jêderek di vê mijarê de nêrînên xwe weha vedibêje:

> "Niha gi îlac e, berê kes nîvçe nediwû. Keçik niha nexweş (adet) nawin. Jinên berê heta 52 salî nexweş diwûn. Her ku kurikekî ûne, jin nû va gênc dibe."[228]

Piştî ku zarok çêbû divê navika wî/ê bê birîn. Wê navikê "pîrik" dibirin. Bi qasî çar tiliyan dihêlin û bi meqesekê an jî cilêteke neşixulandî dibirin. Bi meqes yan cilêta neşixulandî mebest ew e ku pîsî û nexweşiya kesekî din negihöje zarok. Piştre wê navikê bi tayekî paqij girêdidin. Ew navik piştî çend rojan bi xwe hişk dibe û dikeve. Wê navika ku ketiye, dibin li deverekê binax dikin. Di vê navberê de ji bo ku derdora navikê kul nebe car caran hinekî rûn li dora navikê didin. Piştî ku navik ket hinek teniya paqij a êzingan an jî paçikekî bîso dişewitînin

227 Jêder: 20.
228 Jêder: 26.

û ariya wî ya sar dixin şûna navikê. Wisa tê bawerkirin ew arî birînê dikewîne, zuha dike û nahêle ku kul bibe, kêm bigre.[229]

> "Wextê ku kurik bû, navika wî çar tilûya dihêlin û ê mayî jî bi cilatik nû lêdikirin. Navik di ber navikê ra bi dêzi girêdidan. Ku navik ket û şûnda hewik teni dikirin şûna navikê sewê ku kul nebe. Ew navika ku ketiye jî ax vedidan û dikirin binî erdê. "[230]

Heta ku navik ketiye, malbat bi taybetî jî dayik, bi baldarî tevdigerin. Nahêlin ku navik bêwext bikeve. Navika ku ketiye jî navêjin derve ango ser sergo. Lewra, gel wê navika ku ketiye jî wekî jîndarekî/ê dihesibîne. Wisa tê bawerkirin ku mirov wê navikê li ku veşêre dê paşeroja zarok jî li gorî vê yekê teşe bigre. Lewra ji bo ku keçik –wekî jinekê- li mala xwe xwedî derbikevin wê navikê dibin li xanîmalê[231] erdê dikolin û li wir vedişêrin. Heger navik ya lawik be wê navikê dibin li axûra sewalan vedişêrin da ku kurik di hemû jiyana xwe de ji sewalan hez bike.

> "Ê navikê, ku lawik we, digotin: 'Ben bavên xanî ga!' Sewê ku dewêr hez bike. Ku keçik we, digotin: 'Ben bavên xanîmalê!' Sewê ku li malê xa hez bike."[232]

Carinan piştî ku navik dikeve yan hîn ku navik neketiye derdora navikê kul dibe. Wê gavê hinek dims û sabûna rêşkirî bi hev re dikelînin dikin pilor. Wê pilorê hinekî sar dikin û didin ser kulê. Şevekê li ser dimîne. Car caran hinek benîştê benîştokê jî tevlî wê pilorê dikin. Bi vî rengî ew kul diteqe û baş dibe.[233]

Li herêma Semsûrê, pêkanîneke girîng jî derbarê "heval" ê zarok de ye. Li herêmê ji bo malzarokê-plasentayê, navên wekî "mala kurik", "heval" têne bikaranîn. Jêdereke 90 salî di vê mijarê de weha dibêje:

---

229 Jêder: 86, 91, 136.
230 Jêder: 39.
231 **Xanîmal:** Mitbex.
232 Jêder: 60.
233 Jêder: 1, 2, 8, 12, 23, 48, 77.

"Ku kurik bû û şûnda mala kurikan dikirin nav paçan û dikirin bin erdê. Eynî mîna miriya."[234]

Piştî ku zarok hate dinyayê û pê ve hevalê wî jî dikeve. Ew heval jî wekî candarekî/ê (jîndarekî/ê) tê pejirandin. Ji ber vê yekê wî hevalî jî wekî zarokekî mirî dişon, dixin nav paçikekî paqij, dipêçin (her wekî kefen bikin) û dibin li deverekê di bin erdê de vedişêrin.

Dema ku hinekî bi derengî bikeve pîrik alîkariya jinê dikin û wî hevalî dertînin. Ji bo ku jin xwe biguvêşe û wî hevalî bixîne tiştekî pîs ku dilê dayikê li hev bixe dixistin devê wê.[235]

"Kurik bû şûnda, sewê ku hevalê wî jî bikeve, kêndireke pîs dixistin devê dê, sewê ku dilê wê li hev bikeve û verişe. Bi verişînê ra ew ê xa biguvêşe û hevalê zarok bavêje. Wexta Aydinê me hinga bû. Min hevalê wî bir nav zeviyê, kire binê erdê."[236]

Li gorî baweriya hin kesan heger heval li ku bê veşartin, dê zarok jî di pêşerojê de bibe xwediyê wî pîşeyî. Heger zarok keçik bûya û malbatê bixwesta ku keçika wan bibe kebaniyeke (malxwê) baş û xwedîtiyê li mala xwe bike, ji endamên malbatê jinek an jî keçikekê -yekcaran jî xwesiyê- hevalê wê dibir di bermala (zemîn) xanîmalê de kortek dikola û dikir binê axê. Heger lawik ba û heval dibirin di nav axûra pez de vedişartin da ku bibe şivanekî baş û ji sewalan hez bike.

Li Anadolê wisa tê bawerkirin ku heger hevalê zarokekî/ê bêyî ku bê veşartin were avêtin û kûçik û pisîk wî hevalî bixwin, dê zarok di mezinantiya xwe de bibe kesekî/e ku gelek zû kiras û merasan diqetîne. Ji ber vê yekê jî heval dibin devereke xalî û li wir dixin binê erdê.[237]

234 Jêder: 59.

235 Jêder: 62, 67, 80.

236 Jêder: 19, 20.

237 Muharrem Kaya, "Eski Türk İnanışlarının Türkiye'deki Halk Hekimliğinde İzleri", *Folklor/Edebiyat*, 2001; 1 (25), r. 199-218.

### *Xwêkirin, Şûştin û Paqijkirina Zarok*

Li Semsûrê, dema ku zarok çêdibe ji bin lingên wî, navran û binçengên wî heta dev û pozê wî her devera zarok bi xwê tê seyandin. Demekê di nav wê xwêyê de tê hiştin. Ev dem, li gorî pîrikan diguhere. Ji nîv saetê heta çend saetan diajo. Piştre serê zarok tê şûştin.

Tê bawerkirin ku pitika hatiye xwêkirin, wê heta mirinê bêhna xweş jê bê, wê bêhn ji devê wî/ê, bin çengên wî/ê neyê û dê xwêdana wî/ê bêhn nede. Her weha dîsa tê bawerkirin ku di rêwîtiyên dûr û dirêj de wê bin nigên wî/ê cedew negire.[238]

Xwêkirina zarokan ya piştî çêbûnê wekî kevneşopiyekê li gelek herêman didome. Wek mînak, li Antalyayê ji bo zarokê ku nû çêbûye rê û resma xwêkirinê pêk tînin. Ji bo xwêkirinê bang li meriv, dost û der û cîranan dikin. Berê leganeke vala datînin berewê. Her kesê ku hatiye vexwendin li gorî rewşa xwe ya aborî hinek pereyan dixin leganê. Piştre ew pere ji bo zarok wekî bexşîşekê tê hilanîn. Gilê[239] dixin leganê û bi avê şil dikin. Dema ku wekî melhemê nerm bû, hingûv, şîr û xwê tevlî wê heriyê dikin û careke din mist didin. Bi wê heriya ku hatiye çêkirin ji bilî derdora çavan di her devera zarok tê seyandin. Hinek xwê jî di devê zarok didin. Pişre zarok tevî wê heriyê bi paçikekî dipêçin. Zarokê ku hatiye xwêkirin, bi wî awayî bi qasî saetekê dimîne. Piştre bi ava paqij serê wî tê şûştin. Wisa tê bawerkirin ku zarokê/a ku hatibe xwêkirin, dê di mezinahiya xwe de bêhna xwîdanê jê neyê, dê tenduristiya wî baş bibe. Wate ew e ku zarok di pêşerojê de *"gotinên bêxwê"* neke. Her gav peyvên xweş ji devê wî/ê derên.[240]

Handan Asûde Başalê, li Bursayê xebatek kiriye û di vê xebata xwe de bal kişandiye ser edeta xwêkirina pitikan. Li Ġiresunê

---

238 Jêder: 23, 30, 35, 44.

239 **Gil**: Cureyekî axê ye. Li gelek herêman -li dewsa sabûnê û hwd.- wekî amûreke paqijiyê hatiye bikaranîn.

240 Huriye Emen, "Gazipaşa'daki Geçiş Dönemi ve Halk Hekimliği Pratiklerinde Orta Asya Türk Kültürü ve İnanç Sisteminin Tesirleri", *Türk Dünyası İncelemeleri Dergisi*, 2015; 15 (1), r. 29-43.

piştî ku pitik çêdibin sê roj şûnde tên xwêkirin. Ev rê û resm bi xwê, hingûv, qolonya, reşreşk û hinekî avê tê çêkirin. Hemû heyberan li hev dixin û wekî melhemekê bi laşê zarok didin. Paşê bi qasî saetekê-du saetan didin sekinandin û pey re serê zarok dişon. Ev pêkanîn bîst rojan li ser hev tê dubarekirin. Her çend di navbera bajaran de cihêtî hebin jî, baweriya hevpar ew e ku wê pitik bi saya xwêkirinê tim û tim paqij bin, bêhna xirab ji wan neyê û dê zû bi zû nexweş nekevin.[241]

Niha piraniya pitikan li saziyên tenduristiyê tên dinê. Lêbelê li hin gundan hîn jî hin pitik li malê tên dinê.[242] Di demên dawî de ji ber asta perwerdehiyê û serwextbûnê, gel hay ji şaşiyên pêkanîna xwêkirinê çêbûye û hema bêje êdî kes pitikan xwê nake an jî gava tê kirin jî bi awayekî sembolîk tê kirin û paşê pitik tên şûştin.

### *Pêkanînên derbarê zarokên nîvçe de*

Gelek caran, ji ber hin sedemên wekî astengdarî, nexweşî, derb û hwd. zarok hîn ku di malzaroka diya xwe de ne dimirin. Car caran jî piştî çêbûna wan bi demeke kin zarok dimirin. Li herêma Semsûrê, ji zarokên ku pêvajoya çêbûna wan bi silametî neçûbe serî re "nîvçe" tê gotin.[243] Her sal gelek zarok nîvçe dimînin. Gelek sedemên nîvçebûnê hene: Dibe ku ji ber nexweşiyeke ji berê (kok-genetîk) malbatê be. Dibe ku ji ber derbeke ku dayikê di serdema ducanîbûnê de xwarî be; ji ber nexweşiyekê, xwarina dermanên nebaş yên ji aliyê dayikê ve, temenê dirêj yê dayikê, ji ber lihevnehatina xwîna dê û bav û her wekî din be. Di rewşên weha de zarok di malzaroka diya xwe de dimire. Heger bi awayekî xwezayî neyê avêtin yan destwerdaneke tibbî pêk neyê, xwîna bi jehr tev li xwîna dayikê dibe û rê li ber

241 Handan Asûde Başal, "Türkiye'de Doğum Öncesi, Doğum ve Doğum Sonrası Çocuk Gelişimi ve Eğitimine İlişkin Gelenek, Görenek ve İnançlar", *Uludağ Üniversitesi Eğitim Fakültesi Dergisi*, 2006;19 (1), r. 57.

242 Vasfiye Bayram Değer, Erhan Deveci, *Kadınların Doğum Sonrası Uygulamaları: Geleneksel Yöntemler*, Mardin Artuklu Üniversitesi Yayınları, Mardin [illegible]

243 [illegible] 7, 13, 14, 20, 25.

mirina dayikê vedike.

Di bijîşkiya gelêrî de, ji ber ku nayê zanîn bê ka zarokê di malzaroka diya xwe de kêm e yan na, tu pêkanînên bijîşkiya gelêrî jî nînin. Berê, pîrikên zarokan dema ku zarok çêdibû li zarok dinihêrtin. Li gorî tecrûbeyên xwe dizanibûn ku ev zarok nexweş e, kêm e yan na.[244] Bêtir astengiyên fizîkî zû diyar dibin. Heger teşeyê serê zarok xwar be, bejna wî û serê wî ne li hev be, lingê wî xwar be, çavê wî kor be yan şaş be, dest û ling pûç be û hwd. biryara domandin yan rawestandina jiyana zarok di ber çavan re derbas dikirin. Di serdema biryardayînê de piranî bi mezinên malê dişêwirin. Ew piranî xwesî û xwezûrê bûkê ne. Kêm caran jî bi dayik û bavê zarok dişêwirin. Lewra dizanin ku dayik û bav nikarin biryareke weha "zor û zehmet" bidin. Heger biryar neyînî be jiyana wî zarokî radiwestînin.[245] Jixwe wisa bawer dikin ku dê emrê wî zarokî ne pir dirêj be, ew ê bi xwe bimirê. Lewra jî serî li hin pêkanînan didin. Jêderek, serhatiyeke ku bûye şahidê wê, weha vedibêje:

> "Pîrika, di wextê bûnê da jinan ra ari dikirin. Xasiya min a rahmeti, pîrika gund giyê bû. Carekê, kurikikî kêm çêbûwû. Nehiştiwû ku pitê bimêjînin; sewê ku ew kurika bimire. Ew lawika ji birçîna mir."[246]

Pîrik û xwesî nahêlin ku dayik zarokê xwe bibîne û wî/ê bimêjîne. Zarok di demeke kin de ji birçînan dimire. Di demên weha de ji dayikê re dibêjin, *"Zarok mirî hatibû dinyayê, me jî bir ew veşart."* Mebest ew e ku dayik kesekî tawanbar neke û zêdetir xemgîn nebe.[247]

### *Zêristanî*

Li herêma Semsûrê ji bo jina ku nû zarok aniye dinyayê, heta çil rojê pêşî "zêristanî" û ji zarok re jî "çilinî" tê gotin. Li

244 Jêder: 5, 10, 32, 41.
245 Jêder: 4, 20, 23, 41, 58, 60.
246 Jêder: 9.
247 Jêder: 20, 140.

gorî herêma ev nava diguhere. Wek mînak, li herêma Boluyê, ji bo jina zêristanî têgehên wekî "nevse", "emzikî", "şîrî" û hwd. tê bikaranîn.[248] Piştî dema zêristaniyê, heta ku zarok ji şîr qetiyaye ji dayikê re dibêjin "dergûşî". Gelek caran, wateya têgeha "derguşî" fireh dibe û dema zêristaniyê jî digre nava xwe. Di vê serdemê de hem ji aliyê derûnî ve hem jî ji aliyê fizîkî ve gelek guhertin di jiyana jina zêristanî de pêk tên.[249]

Piştî ku zarok hate dinyayê, parastina tenduristiya zarok û diya wî/ê gelekî girîng e. Lewra tê zanîn ku gelek dayik di dema anîna zarokan de an jî piştî anîna zarokan bi demeke kin jiyana xwe ji dest dane. Li gorî lêkolîneke, ji sedî 20ê jinên ku di serdema zêristaniyê de jiyana xwe ji dest dane di roja yekemîn ya piştî zayînê de mirine.[250]

Xwedîkirina zarokan, heta demeke dirêj tenê bi şîrê dayikê pêkan e. Ji ber vê yekê jî piştî ku zarok çêbû, memikên dayikê bi ava germ û sabûnê dişon û mist didin. Mebest ew e ku şîr bikeve nav memikên dayikê. Piştre zarok digirin rê û resma û qoçkirinê[251] li dar dixin. Devê zarok dibin ser memikê dayikê û hêdî hêdî zarok hînî şîrmijandinê dikin. Ji şîrê dayikê yê pêşî hinekî dipijiqîn ser çavê zarok. Bi vê pêkanînê tê bawerkirin ku zarok diya xwe nas dike.[252] Hin kes jî ji bo ku zarok bibe xwediyê sinceke baş, jîr û jêhatî be, ji mezinên xwe re bi rêzdarî tevbigere û hwd. diçin ew jina ku xwediyê van taybetmendiyan e tînin û jê tika dikin ku cara pêşî ew şîr bide zarok. Wisa tê bawerkirin ku zarok cara pêşî şîrê kê vexwe ji aliyê sinc, xweşikî û hwd. ve dê bişibe wê. Her weha piştî vexwarina wî şîrî zarok bi zarokên wê jina yên rasteqîn re dibe *"şîrbira"* û heta mirina xwe bi zarokên

248 Umut Erdoğan, "Bolu Yöresinde Doğum Sonrası Törenler: Bebek Kırklama, Kırk Basma Külü Geleneği, Alkarısı İnancı ve Kırk Mevlidi". *IV. Uluslararası Bolu Halk Kültürü ve Köroğlu Sempozyumu Bildirileri*, Ankara, Akçağ Yayinlari, 2015, r. 224-250.

249 T.C. Millî Eğitim Bakanlığı, Doğum Sonrası Dönemde Anne Bakımı, 2018, http://www.megep.meb.gov.tr/mte_program_modul/moduller/.pdf (01.01.2019).

250 http: www.hips.hacettepe.edu.tr, uaop_ankara, UAOC2005-OzetRapor.pdf (2[illegible].09.2018).

251 **Qoçkirin:** Ji rê û resma pêşî ya mêjandina zarok re tê gotin.

252 [illegible] 17, 18, 52, 70, 118.

wê jinê re nikare bizewice.[253]

Jin, piştî ku zarokê xwe anîn dinyayê zikê xwe bi destmalekê, benekî an jî bi buxçeyekê girêdidin. Mebesta jinan ew e ku ben, zikê wan germ bihêle. Bi vî rengî jin xwe ji girtina sermayê diparêzin. Her weha jin, di serdema ducanîbûnê de qelew dibin. Goşt û bezê laşê wan zêde dibe. Ji ber vê yekê jî piştî zayînê jin hinekî jar dibin lê vê carê jî zikê wan dadikeve. Ji bo ku ew bez û goştê zikê wan bihele lê zikê wan jî danekeve hûrê xwe hildidin û ji aliyê bin ve bi amûrekê dipêçin. Wisa bawer dikin ku ew ê zikê wan danekeve û "li ser xwe" xuya bikin, ciwan bimînin. Ji aliyê tenduristiyê ve jî wisa tê bawerkirin ku berzikê jinan bi vî rengî zû dikewe; kul û êşên jinan zû baş dibin; jin zû bi ser xwe ve tên. Li herêmên din yê Tirkiyeyê jî pêkanînên bi vî rengî hene.[254] Heman tişt -kêm zêde- li deverên din ên Tirkiyeyê jî heye.[255]

### *Amadekirina Xurekan û Tenduristiya Dayikê*

Serdema zêristaniyê, hem ji bo zarok hem jî ji bo dayikê gelekî girîng e. Lewra zarok hînî rewşa hewayê, xwarin û vexwarinê nebûye. Dayik jî di serdema welidandinê de gelekî diêşe, diweste û ji aliyê tenduristiyê ve jî nazik e. Gumana nexweşketina dayikê zêdetir e. Hestiyariya dayikê zêde ye. Ji aliyê derûniyê ve jin di rewşeke awarte de ye. Tenduristiya zarok hinekî jî bi tenduristiya dayikê ve girêdayî ye. Heta çil rojê pêşî ji bo dayikê û her weha zarok hin xwarinên taybet têne çêkirin. Mebest ew e ku dayik zû bi ser xwe ve bê û her weha şîrê wê zêde bibe da ku zarok têr bixwe.[256] Lêbelê divê hin taybetiyên van xwarinan hebin. Divê xwarin nerm bin; bayê (gaz) çênekin; dayikê û zarok neêşînin; ji aliyê naverokê ve dewlemend û sûdewar bin.[257] He-

---

253 Jêder: 5, 7, 130, 160, 162.

254 Jêder: 5, 8, 18, 20.

255 Birsen Bilgen Sivri, Nimet Karataş "Toplumun Kültürel Yönü: Doğum Sonu Dönemde nne ve Bebek Bakımına Yönelik Yapılan Geleneksel Uygulamalar ve Dünyadan Örnekler", *Güncel Pediatri Dergisi*, 2015; 13, r. 183-193.

256 Jêder: 138, 139, 140, 141, 151, 163.

257 Jêder: 22, 23, 30, 46, 47, 58.

ger digel hemû hewldanan jî şîr nekeve paşila dayikê wê dibin ber "Ziyareta Şîr". Jin tevî zarokê xwe û hin endamên malbatê diçin ber wê ziyaretê. Li wir şevekê radizên. Dia dikin û dibêjin, *"Ya Rebbî/Xwedêyo! Tu bidî xatirê vê ziyaretê û vî zarokê bêguneh. Tu şîr bixî paşilê min ku ez zarokê xwe bi wî şîrî xwedî bikim."*[258]

Li herêma Semsûrê, piraniya wan xwarin û vexwarinên ku didin jina zêristanî şêranî ne. Ji dims û şekir têne çêkirin. Berê xwarina herî zêde dims bû. Lewra gelek xwarin bi dimsê dihatin çêkirin. Di dema anîna zarokan de dayik gelekî diweste. Ji bo ku westana dayikê derbas bibe, taqet bikeve canê dayikê, birînên wê bikewin, dayik û zarok pê neêşin (ba nekeve zikê herduyan) û şîr bikeve memikên dayikê xwarinên taybet ji bo jina zêristanî dihate çêkirin. Pelok, şerbeta dims, hesîde, kilorên taweyê û hêkemot hin ji van xurekan in. Hin ji wan li xwarê hatine rêzkirin:

**Hêk û Dims (Hêkemot):** Du hêkan dişkînin û kevçiyek arvan tevlî hêkê dikin û tev didin. Piştre hinek rûn diqijirînin û hêkan dikin qêxane. Piştî ku qêxane pijiya bi kevçî hinekî hûr dikin û qedehek dimsê tirî berdidin ser qêxanê û careke din dikelînin. Piştî ku kel pê ket agir dikujin.

> "Hêk û mot, pelok û hesîde didan dê. Sewê ku zik û malika dê xweş biwe û şîr bikeve çiçikan. Ku şîrê dê tunewû şekir dikirin avê û didan zarokan. Carinan jî rûn di şêkir heldistiran, her carê pirtîskek[259] dixistin devê zarok."[260]

**Rûn û** Şekir: Ev xwarin, taybetî ji bo zarokê ku nû çêbûye ye. Dema ku şîrê dê peyda nabe yan têra zarok nake, ji bo ku zarok ji birçînan nemire hinekî şekir û rûnê nivîşkî di nav hev de distrên. Her carê bi qasî nokekê dixistin devê zarok.[261]

Şerbeta Dims (Şerbeta Mot): Ji aliyê taqetê ve vexwarineke xurt e. Ji bo ku şîrê dayikê zêde bibe û taqeta dayikê zêde bibe,

---

258 Jêder: 2, 5, 6, 12.

259 **Pirtîsk:** Hindik, para tiştekî ya gelekî piçûk. Qasî nokeke hişk.

260 Jêder: 138, 139, 140, 141, 151, 164.

261 Jêder: 100, 101, 102, 103, 104.

dims û hinek av li hev dixin, dikin şerbet û didin dayikê.[262]

Şorbeya Genim: Hinek av dixin ser genimê kutayî û beroşê didin ser êgir. Heta ku baş nerm bûye dikelînin. Piştre, hinek rûnê nivîşkê di teweyeke piçûk de diqijirînin û valayî ser danê kelandî dikin. Bi taybetî êvaran didin dayikê. Wisa tê bawerkirin ku ew genim dê zikê dayikê têr bike û şîrê dayikê jî zêde bike.[263]

**Xoşav:** Bi taybetî di demsalên zivistan û biharê de ji bo jinên zêristanî xoşavê çêdikin û bi germî didin vexwarin. Xoşavê ji xurekên hişkkirî yên wekî mewîj, kaxê (qax) hirmiyan, sêvan, çîrê mişmişan û hwd. çêdikin. Ji bo ku xoşav şêrîn bibe hinek dims jî tev lê dikin. Xoşav, di demsalên havînê de jî tê çêkirin lêbelê bi henikahî tê vexwarin.[264]

**Kilorên Teweyê:** Jinên der û cîranan di serdana jina zêristanî de kilorên teweyê bi xwe re dibin. Ji bo ku kiloran çêbikin, hevîrê pişê (hevîrtirş) wekî gilowerekê tenik û pahn dikin, dikin kilor. Mezinbûna kiloran bi qasî ku here hundirê teweyê ye. Di navenda kilorê de qulikekê vedikin. Piştre hinek rûnê nivîşkê dixin nav teweyê û germ dikin. Kilorê dikin teweyê. Ew kilora di nav rûn de dipije. Çend heban didin ser hev û diçin serdana jina zêristanî. Li gorî baweriyê ew kilor derman in. Birînên dayikê dikewînin, dibin û şîr dikevin paşilê dayikê. Ev pêkanîn li herêma Semsûrê êdî bûye kevneşopiyek.[265]

Li herêma Boluyê ji bo jina zêristanî "şerbeta zêristaniyê" tê çêkirin. Ev şerbet, ji bo ku *"xwîn bikeve kezeba dayikê"* ango ji bo ku jin bi ser hişê xwe ve were, hêz û taqet were jina zêristanî tê çêkirin. Ev şerbet bi av, şekir, şekirê zêristaniyê, tarçîn, qurnefîl û qerebîbera saxî tê çêkirin. Hemûyan bi hev re dikelînin. Piştre hinekî sar dikin û didin jina zêristanî. Wisa tê bawerkirin ku dê bi vê şerbetê jin bi hêz taqetan ve were û şîrê wê dê zêde bibe. Her weha piştî vê şerbetê "helawa zêristaniyê" jî bi dayikê didin xwarin.[266]

---

262 Jêder: 15, 17, 23, 24, 86.

263 Jêder: 75, 76, 80, 84, 86.

264 Jêder: 29, 39, 61, 68, 77.

265 Jêder: 3, 18, 145, 151, 154.

266 Umut Erdoğan, "Bolu Yöresinde Doğum Sonrası Törenler: Bebek Kırklama,

## PÊKANÎN Û BAWERIYÊN DERBARÊ PARASTINA DAYIK Û ZAROKÊ DE

Pêvajoya zêristaniya dayikê û çilîniya zarok ku piştî zayînê bi heta çil rojî diajo, ji bo zarok û dayikê gelekî girîng e. Lewra di rewşa derûnî û ya fîzîkî ya dayikê de guhertinên girîng pêk tên. Dayik, di vê serdemê de ji aliyê taqetê ve qels dikeve û ji ber anîna zarok jî gelek êşan dikişîne. Heta 20-25 rojan xwîn ji ber diçe. Bi enfeksiyonan re rû bi rû dimîne. Ji aliyê statûye ve guhertin çêdibe û ji bilî payeya bûkbûnê êdî dibe xwediyê payeya dayikbûnê jî. Zarok, ji dinyaya malzarokê dertê û bi dinyaya rasteqîn re rû bi rû dimîne. Adaptasyon ango hînbûyîna wî ya vê dinyaya nû gelekî bi êş derbas dibe. Lewra, êdî bi şêweyekî din hilmê dide û distîne; bi şêweyekî din xwe têr dike; laşê zarokan bi sedan cure nexweşîn û mîqroban re rû bi rû dimîne. Her weha li dijî sermaya dinyayê divê zarok bê parastin. Di vê pêvajoya dirêj û dijwar de zarok bê zar û ziman e. Tenê dikare bigrî û hin dengên bêwate derîne. Ji ber wan sedemên ku li jor hatine diyarkirin û gelekên din divê dayik û zarok ji mirinê bêne parastin. Ev yek jî piranî bi piştgiriya civaka derdora jinê pêk tê.

Li gorî çand û baweriya civakên rojhilat, di pêvajoya zêristaniya dayikê û çilîniya zarok de xetereya herî mezin çilvêketin e. Dijminê herî mezin jî Pîra Xêw e. Li gorî baweriya gel, dayik û zaroka ku bikeve nav lepên Pîra Xêw dê bimire. Ji bo parastina dayik û zarok ya ji êrîşên Pîra Xêw çeka herî xurt hesin e. Pîra Xêw tenê ji hesin ditirse. Ji ber vê baweriyê, divê em hinekî li ser nêzîkatiya civakê ya hesin rawestin.[267]

Di nav çanda gelek civakan de têkiliya mirovan û hesin têkiliyeke ne ji rêzê ye. Helbet ev têkilî bi carekê ve çênebûye. Berî ku tiştek di nav civakê de bi cih bibe û bibe perçeyek ji jiyana mirovan divê hin pêvajo bêne derbaskirin. Ev yek ji bo hesin

Kırk Basma Külü Geleneği, Alkarısı İnancı ve Kırk Mevlidi". *IV. Uluslararası Bolu Halk Kültürü ve Köroğlu Sempozyumu Bildirileri*, Ankara, Akçağ Yayınları, Ankara 2015.

267 Ozhan Öztürk, "Al, Albastı, Alkarısı İnanışı", http://ozhanozturk.com/2017/11/20/al-albasti-alkarisi-inanisi/, (03.12.2018)

jî weha ye. Bi taybetî di warê ol û baweriyan de li dijî nûjenî, afirandin û bikaranîna berhemên nû nerazîbûneke giştî her tim heye. Frazer, li ser vê mijarê hûr dibe û balê dikişîne ser girîngiya demê û pêvajoyê, dibêje:

> "Nexasim di dînên pîroz de li hemberî nûjenîbûn û îcadan nerazîbûnek heye. Tê zanîn ku di serdemên kevn de qral û keşîş li hemberî şixulandina (xebitandin) hesin rabûne. Mesela, li Polonyayê di çandiniyê de ji bo şixulandina pûlixên hesinî tê gotin ku dibin sedema kêmbûna hilberînê. Her çend hesin, li hêlekê wekî tiştekî bêyom hatiye hesibandin li hêla din ve jî li hemberî cin, an jî rihên xirab wekî amûreke parastinê hatiye bikaranîn."[268]

Li aliyê din ve ew hesinên ewqasî bêxêr, li dijî cin, rihên xerab û tiştên nepen yên din wekî çekeke xweparastinê jî hatine bikaranîn. Li gorî teoriya dualiyê, hesin ji bo jiyaneke baştirîn ya mirovan amûreke gelekî baş e lê li aliyê din dibe sedema gelek xerabiyan jî.

Li gorî çanda gelek welatan hesin, di heman demê de sembola hêz û xurtbûnê ye. Wek mînak, di nav civaka Tirkan de gelek kesên bi navê Demir (Hesin) hene. Hesin, amûra xweparastinê ye di heman demê de. Di bijîşkiya gelêrî de hesin, mirovan ji nexweşînan, ji sêhran û mirinan, ji bobelatan, ji çavan diparêze. Ji ber vê yekê jî di gelek pêkanînên bijîşkiya gelêrî de hesin tê bikaranîn. Li hemberî *Pîra Xêw*, li cem jina zêristanî her gav amûreke hesinî heye. Hesin, di civakên rojhilatî de ji bo tenduristî û başbûna dayik û pitikê, xwedî ciheki girîng e. Tê bawerkirin ku ev heyberê ku nexasim di dema çilîniyê de hewl dide dayikê û pitika wê bikuje, tenê ji hesin ditirse.[269]

## Pîra Xêw û Çilvêketin

Baweriya çilvêketinê ji Çînê heta Rojhilata Navîn û Tirkiyeyê

268 James G. Frazer, *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, r. 172-173.
269 Hülya Çevirme, Ayşe Sayan, "Alkarısı İnanmaları ve Bilim", *Millî Folklor*, 2005; 65, r. 68.

di nav gelek welat û civakan de bi navên cihê heye û dijî. Di ferhenga mîtolojiyê, ku ji aliyê Celal Beydili ve hatiye amadekirin de gelek navên din ên wan rihên xerab hatine vegotin û danasîn.[270] Li gorî hin lêkolîneran, hîmê vê baweriyê digihêje baweriya Şamanîzmê û her weha baweriyên din ên kevin.[271]

Di nav Kurdan de ji bo vê heyberê, ji bilî *Pîra Xêw*, navên wekî *Kapoz, Hibilik, Hafdar, Elk, Pîrebok, Pîrabok, Pîrevok* hwd. jî tên gotin. Li Semsûrê ji bo vê heybera xeyalî gelek navên cuda têne bikaranîn: Wekî *Pîra Xêw, Pîrevok, Elk, Cinê Jina, Çil*, Çelû hwd. Her weha mirov dikare navê *"Teyr"* ku li herêma Semsûrê, wekî rawirekî xêw tê zanîn jî li van navan zêde bike. Lewra li hin gundên çiya ên Semsûrê ji wî heyberê nepen û xerab ku xisarê dide jina zêristanî û zarokê wê re "teyr", "teyrik" tê gotin. Berê li herêma Semsûrê tifik hebûn. Dema ku xanî û mal çêdikirin ser banî gişî nedigirtin. Li navenda banî qulikeke/kulekek fireh dihîştin. Mebest ew bû ku dema ku zivistanê li hundir agir dadan, dûxan ji wê qulikê/kulekê derkeve derve. Li gorî baweriya gel, teyr tê û ji wê tifikê re dadikeve hundirê malê. Li zarokê ku hîn çilînî ye dixe û wî dikuje. Carinan jî wî bi xwe re jî dibe. Gel, ji bo ku rê li ber vî "teyrî" bigre, dema ku agir ne pêketî be ji nav daristanan gurzek sitiriyê reş jêdikir û dianî dixist devê wê tifikê/kulekê. Di xaniyên niha de ew cure tifik/kulek nînin.[272]

Ji bo ku tevlihevî çênebe em ê ji niha û pê ve tenê "Pîra Xêw" bi kar bînin. Pîra Xêw, wekî heybereke alema cinan tê qebûlkirin. Ji ber tirs û xofa ku dilê mirovan de bi cih bûye, di dema axaftinê de navê wê nayê bilêvkirin. Gel, gava mirov neçar dimîne, ji bo wê heyberê cînavên *"ew, ê xêw"* bilêv dike. Ji berê heta niha di nav gel de, li ser hebûn an jî nebûna *"Pîra Xêw"* nîqaş hene. Çiqas kesên ku bi vê yekê bawer nakin û wekî *"xurafe", "baweriyeke pûç" û "derew"* dihesibînin hebin ewqas jî kesên ku bi hebûna wê bawer dikin û sond dixwin jî hene. Helbet peyitandina hebûn an jî nebûna Pîra Xêw ne karê me ye.

270 Celal Beydili, *Türk Mitolojisi Mitolojik Sözlük*, Yurt Kitap Yayın, Ankara, 2003.
271 Orhan Acıpayamlı, *Türkiye'de Doğumla İlgili İnanmaların Etimolojik Etüdü*, Türk Tarih Kurumu Basımevi, Ankara 1961.
272 Jêder: 9, 14, 52, 54, 63.

Em tenê dikarin rewşa heyî li vir vebêjin û binirxînin. Ew kesên ku bi hebûna "Pîra Xêw" û "çilvêketin"ê sond dixwin û dibêjin *'Me bi çavên serê xwe dîtiye.'* çil, wekî tiştekî xêw dipejirînin. Ji ber vê yekê jî Pîra Xêw, bi her kesî ve xuya nabe. Piranî wekî jineke çeleng û lihevhatî derdikeve pêşiya jinên zêristanî. Lêbelê carinan jî wekî pîrebokeke ku pordirêj û porgijik xuya dike. Pîra Xêw gezok, xwînxwar e; xwediyê memikên dirêj e ku digihêjin erdê. Wisa di demên bêkêys de derdikeve pêşiya mirovan. Car heye wekî jin an jî mêrekî ku cilên spî li xwe kirine û tevir û bêr jî li ser milê wê/î ne xuya dibe. Derbarê teşeya wê de hîn gelek tiştên sosret dibe bên gotin.[273]

Wekî tê zanîn, piştî zarokanînê xwîn ji dayikê diçe, ji taqetê de dikeve û hal tê de namîne. Ji ber vê yekê îhtimala vegirtina enfeksiyonê ya dayikê zêde ye. Ji bo wê ev serdem, serdemeke hestiyar e. Nexasim jina biçel gava îltihabê vegire zêde disincire, hêrsoyî dibe, bêhal dibe. Heger enfeksiyon zêde bibe peşrew tên ber çavê wê.

Derbarê Pîra Xêw ya sawdar de gelek gotegot, bîranîn, çîrok an jî efsane hene. Yek ji vana jî rewşa*"çelvêketin"*ê ye.

Li herêma Semsûrê, ji peyva "çil" bêtir, têgeha "çilvêketin"ê ji bo wê rewşa nebaş a jina zêristanî û zarok tê bikaranîn. Ji bo jina di vê rewşê de hêmayên wekî, "jina çelînî", "zêristanî", "jina nav cîha", "jina nexweş" jî tê gotin. Rewşa çilvêketinê, ji aliyê zanistî ve, dibe wekî germbûna canê dayikê yê ji ber enfeksiyona piştî zayînê were penasekirin.[274] Piraniya pêkanînên ku piştî bûyîna zarok li ser dayik û zarokê wê têne bikaranîn, bi mebesta rawestandina vê germbûna canê dayikê û zarok in. Li gorî baweriya civakê, çilvêketin rewşeke gelekî bi xetere ye. Ji roja zayînê heta bi çil rojî Pîra Xêw û rihên xerab li dora dayikê û zarok digerin. Çawa ku derfetê bibîne Pîra Xêw dê dayikê û zarokê wê bikuje.

Têgeha "çil" ji bilî hejmarekê her weha serdemeke nêzîkî şeş hefteyan ku di jiyana jina zêristanî û zarokê wê de gelekî girînge jî destnîşan dike. Di vê serdemê de jin ji aliyî hêz û taqetê

273 Jêder: 4, 11, 32, 45, 108, 109, 110.

274 Jêder: 10, 36, 43, 60, 61, 80, 88, 90.

ve qels in. Ji aliyekî ve xwîn ji ber wan diçe, canê wan germ e û diêşe; gumana nexweşketina wê zêde ye. Di tiba nûjen de ji bo vê rewşê têgeha "Sendroma Zêristaniyê" tê bikaranîn. Jin ji aliyekî ve ji bo tenduristiya xwe li ber xwe didin ji aliyê din ve jî zarokê xwe dimêjînin. Jin di vê pêvajoyê de lawaz û bêtaqet dimînin. Ji ber vê qelsiyê jî "cin û cinawir" terka wê nakin. Li gorî baweriyê, *heger rihên xirab keysê lê bibînin ew ê kezeba jinikê û zarok bixwin û wan bikujin.* Gel jî vê yekê dizane û li dijî wan *cin û cinawiran* hin tevdîran distîne. Lewra êdî wan "nas dike". Bi aliyê wan ê "qels" dizane. Wek mînak, dizane ku ew cin ji hesin ditirsin. Lewra gel kêr, meqes, das û hwd. tiştekî hesinî dide ber serê jina zêristanî yan bin balîva ber serê wê. Gel dizane ku "cin" ji ronahiyê ditirsin. Ji ber vê yekê heta çil rojê wê temam bûye lampeya ber serê jina zêristanî natefînin.[275]

### *Xapandina pîra xêw û hêzên nepen*

Di nav civakên rojhilatî de hebûna zarokên lawîn gelekî girîng e. Ew malbatên ku zarokên wan hemû keçik in wekî "kordûnde" têne hesibandin. Hin malbat hene ku zarokên wan ê kur çêdibin lê piştî demeke kin ji ber sedemên cihê jiyana xwe ji dest didin. Di rewşên weha de malbat û civak wisa bawer dikin ku hin hêzên "nediyar-nepen" hene û ew nahêlin ku zarokên kur bijîn. Heger ew hêzên nepen heta ku zarok gihîştine heft saliya xwe zarokan nekuje, êdî nikare wan bikuje. Dîsa li gorî baweriyê, heger ev hêzên nepen zayenda zarokan ji hev dernexin yan zayenda zarok (kurbûna wî) heta heft salan ji hêzên nepen bê veşartin. Heger ev yek pêk bê dê zarok (bi taybetî yên kur) emrekî dirêj bijî.[276]

Malbat û civak, ji bo ku wan hêzên "nediyar-nepen" bixapînin serî li pêkanîn û rêbazan didin. Malbat û civak wisa bawer dikin ku divê zarokê "kurîn" wekî "keçik" were nişandan, ji bo vê yekê jî heta ku kurik bibe heft salî porê wî jênakin. Porê wî wekî yê keçikan dikin kezî û guliyan bi ser pişta wan ve berdi-

---

275 Jêder: 4, 11, 32, 45, 47, 82, 94, 99, 117, 120.

276 Jêder: 19, 45, 78, 63, 79, 95, 114.

din. Kinc-cilên keçikan li wan dikin.[277] Li Diyarbekir û derdora wê dema ku zarok çêdibe li ser eniya wî bi teniyê (arî) şaneya xaçperestan ango xaçê çêdikin. Wisa tê bawerkirin ku Pîra Xêw û hêzên nepen ên xerab dijminantiyê tenê ji misilmanan re dikin; tenê zarokên misilmanan dikujin. Misilman jî ji bo ku wan efsûnên xerab bixapînin hewl didin ku zarokên xwe wekî yên xaçperestan binimînin.[278]

Heger malbat û civak di van rêbazên xapandinê serkeft û zarok, heft salê xwe temam kir, wekî pîrozbahiyekê diçin ber ziyaretekê û li wir cara yekemîn porê kurik jê dikin. Ew malbatên ku zarokên wan tunene yan lawikên wan nînin jî ji bo rê û resma porkurkirinê têne vexwendin. Peywirdar yan parêzvanê ziyaretê porê wî kurikî bi meqesê jê dike. Ew malbatên ku lawikên wan zû dimirin an jî zarokên wan (keç û law ferq nake) qet çênabin, porê wî lawikî -bi destûra malbetê- ji xwe re dibin; li mala xwe hiltînin. Hêvî û bawer dikin ku ew por dê ji wan re bi xêr bê û dê zarokên wan jî çêbibin û emirdirêj bibin. Piştî vê rê û resmê, malbata lawik loqmeyekî çêdike û belav dike. Di vê mijarê de jêderek serpêhatiya xwe bi van gotinan vedibêje:

> "Wextê ku lawkî me (Samî) bû, me heft sala porê wî newirî. Heft sala şûnda me bir ber ziyaretê. Bekçiyê ziyaretê porê wî lê kir. Du guliyê aha dirêj bûn. Dû va, me loqme çêkir û danî erdê. Ew gulîna (y)êk lê kirêciyê me bir, ê di jî nê bîra mi ki kê bir lê (y)êkî di(n) bir.[279]"

Hin malbatên ku rewşa wan ya aborî baş e, rê û resma porbirînê li mala xwe çêdikin. Piştî ku porê kurikê xwe dibirin wî porê jêkirî diwezînin. Bihayekî ji wî porî re diyar dikin. Bi qasî bihayê wî porî şêraniyê dikirin û li zarokên taxê belav dikin. Bexşîşeke baş jî didin wî porbirê ku porê lawik jêkiriye. Li gorî baweriyê, piştî vê rojê êdî xetereya mirina lawik ji holê radibe. Lawik bêyî ku bê "veşartin" û "parastin" jî dikare jiyana xwe

277 Jêder: 1, 5, 6, 8, 16, 18, 21, 33, 48, 58, 70.

278 Kızıl, *Diyarbakır ve Çevresindeki Dini Anlayışta Mitolojik Unsurların Etkisi*, r. 180.

279 Jêder: 42.

bidomîne.

Li gorî hin jêderan, hêzên nepen carinan ne bi tenê ne. Bi kêmanî du kes in û tevî tevir û bêrên xwe tên ku dê û zarok –qet nebe ji her duyan yekî- tirba wan bikolin û bikujin. Çavên xwe li derdorê digerînin, jineke tenê yê zêristanî li ku be xwe li wê û zarokê wê digrin. Ew dizanin ku bi taybetî di çil rojê pêşî de zarok û dayik bê pergal in, qels in, *"tevir û bêr li kêleka wan in."* Ji ber vê yekê jî gel ji hevdu re dibêje, "Jina zêristanî li malê bi tenê nehêlin." Jineke navsere serpêhatiya xwe ya derbarê hêzên nepen de weha vedibêje:

> "Şeva ku Xadê lawikê me da ne şeva di bû. Ew[280] çû ser xênî ramediya. Eyîz[281] jî î hîn çiçûk bû. Havîn bû. Hîn dinê tarî nebûwû. Ez ê tenê di binî xêni de bûm. Hember mala me jî gi(ş) tahlan[282] bû. Ez rûniştî bûm. Mehemedê mi jî î di hemêzê mi da ye, ez wî dimêjînim. Mi dî ku du meri (cin) hatin û ningê xa dan ser hesinî devê derî. Êkî kincê reş ê lê bûn, î di jî ê spî mîna berfê. Êkî tevirî li ser piya bû, yekî jî bêr. Êk î 13-14 salî bû, î di hewkê li wî girtir bû. Mi go:
> - We xêr e?
> Go:
> - Em hatine ku em tirbê te vedin. Mi lê vegerand û go:
> - Ûnê hîn çûçik in, şenakin vedin.
> Go:
> - Belê belê. Em kanin. Mi go:
> - Na, na.
> Mi dî ku li ser qûnê bi şûnda çûn. Ew çûn û şûnda ez tirsiyam. Ê dev û didanê min li hev dikevin. Lambê vêketîbû. Li tirsa ez heta siweda raneketim. Serî siwê, min li kê ra qal kir, gotin: 'Bi te hung hatiye. Te xewn diye.' Mi got, 'Ê qe ez neyî di xew da wûm.' Îna nekirin. Ew kurika songi jî mir. Li salekê ra mehek xa mabû."[283]

---

280 Jêder behsa mêrê xwe dike.

281 **Eyîz**: Zarokê malbatê yê mezintir e.

282 **Tahlan**: Peyveke herêmî ye. Devera ku mirovan dest nedayê ye û bi dar û striyan dagirtiye.

283 Jêder: 9.

Li gorî baweriyeke din, ew hêzên nepen carinan dijminantiyê ji zarokan re nakin. Tenê rikê ji malbatê digrin û ji bo tolhildanê zarokên wan dikujin. Malbat jî vê yekê dizanin. Lewra, heta ku temenê zarok gihîştiye heftan ji lawikê xwe re kincan (cil û bergan) nakirin. Kincên meriv, der û cîranên xwe li lawikên xwe dikin. Carinan jî -ji dizîka ve- pere didin hinekên din. Dibêjin, ha ji te re pere, here ji lawikê min re kincan bikire. Wisa bawer dikin ku hêzên nepen wî lawikî wekî *"yê hinekên din"* dizanin û lewma jî wî nakujin.[284]

Ew hêzên nepen, ji ronahiyê û hesin ditirsin. Ji ber vê yekê heta çil rojên pêşî meriv û dostên malbatê, zarok û jina zêristanî bi tenê nahêlin. Li odeya ku dayik û zarok lê razayî ne her şev heta sibehê lampe vêketî dimîne. Xwesî, diya jinikê, mêr yan jî meriveke jinê (xwîşk, dayik, pîrik û hwd.) her şev li jina zêristanî radizê, wê û zarok tenê nahêle. Hesinekî (wekî kêrekê, dasekê û hwd.) didin bin balîva dayikê. Hesinekî piçûk jî dixin nav dergûşê, ber serê zarok.[285]

Di dema zêristaniyê de divê çilê jinan bi hev nekeve. Ango divê du jinên zêristanî neyên bal hev. Li gorî baweriyê heger çilê wan tevlihev bibe dê tiştên xerab werin serê zarok û jinan. Ji bo ku rê li ber bobelatan were girtin heta ku ji wan tê nahêlin ku her du jin li hev rast bên, hevdu bibînin. Carinan ji neçarî, her du jinên zêristanî li hevdu rast tên. Di demên weha de jin derziyên xwe bi hevdu diguherînin. Heger derzî tunebe bişkojeke ji qutikê (îşlig) xwe jê dikin û bi hevdu diguherînin. Heger ew jî tunebe ji kirasê xwe perçeyekî piçûk jêdikin û bi hevdu diguherînin. Mebest ew e ku hêzên nepen wan tevlihev nekin û bela xwe ji wan vekin.[286]

Malbatên ku zarokên wan ê pêşî dimirin, ji bo ku zarokên ku dê bibin jî nemirin serî li ziyaretan, êrikan û ocaxan didin. Ji bo gel hemû jî pîroz in. Ji bo her daxwaz û hêviyê dikarin serî li wan kes û cihên pîroz bidin. Lê hin êrik û ziyaret jî hene

284 Jêder: 9, 15, 20, 54, 60, 76, 80, 86, 92.
285 Jêder: 1, 2, 3, 5, 11, 14, 23, 40.
286 Jêder: 30, 35, 43, 52, 75, 90.

ku hin kes bi taybetî serî li wan didin. Lewra, li gorî baweriya gel her êrikekî taybetmendiyek wî heye. Gel jî li gorî pêdiviya xwe êrik û ziyareta ku serî lê bide hildibijêre. Wek mînak, li gundê Hesenkan yê girêdayî bajaroka Komîrê, "Êrikê Gulmadê" heye. Ev êrik di rastiyê de mezelê jineke bi navê Gulmad e. Ew mezel jî di nav goristana gund de ye. Li gorî rîwayetan, berê li vî gundî jineke bêkes hebûye. Kesî nizanibûye bê kî ye, ji ku hatiye. Navê wê "Gulmad" bûye. Jiyana wê li dora dareke çinarê yê nêzîkî gund bûye. Dema ku gundiyan pezê xwe ji bo dotinê û mexeldanê anîne bin vî çinarî, Gulmadê jî ji bo dotina pez alîkariya jin û keçên gund kiriye. Gundiyan jî bi xêra xwe hin nan, şîr û pêdiviyên din dane wê. Rojekê Gulmad li bin wê darê mirî hatiye dîtin. Gundiyan jî ew biriye li nav goristana gund veşartiye. Bi demê re gel wisa bawer kiriye ku zarokên ku bi axa dora wê gorê werin şûştin, namirin. Malbat piştî ku zarokê wan çêbûn diçin hinek ax ji dora wê gorê radikin û tînin dixin nav avê. Serê zarokê xwe bi wê avê dişon.

> "Tirbikê li nav mezelî me Hesenkan e. Diwên Tirbê Gulmadê. Ê li malê Silan e. Em derin axê wê darê tînin dikin nav avê, pê kurika dişon. Sewê ku nemirin."[287]

Di herêmên din de jî baweriyên bi vî rengî hene. Wek mînak, li Agiriyê tê bawerkirin ku Elk/Pîra Xêw, xisareke mezin dide lebatên navîn yên jinan. Ji bo pêşî li vê bê girtin, bi navê "jajerûn" xwarinekê çêdikin û didin jina zêristanî. Jajerûn, bi arvan, şekir û rûnê nivişk tê çêkirin. Xwesî, bi "Bismilayê" kevçiyê ewil sê caran dibe ber devê jina zêristanî û tîne, piştre dixe devê wê. Tê bawerkirin ku bi vî awayî pêşî li ber Elkê/Pîra Xêw tê girtin û ew nikare têkeve hinavên dayikê.[288]

Di nav çanda Tirkan de jî baweriya bi Pîra Xêw heye. Orhan Acıpayamlı (1961) -ku di vê mijarê de xebatên cur bi cur kirinedi xebateke xwe de derbarê Pîra Xêw de weha dibêje:

---

287 Jêder: 27.

288 Akif Arslan, Şahin Çelikkaya, Abdulhan Taşbaşı, "Türk Kültürü Bağlamında Ağrı İli Alkarısı İnanmaları", *Millî Eğitim*, 2016; 212 (2), r. 208.

> "Ev rewşeke nexweşok û riheki xerab e ku bi taybetî raseletî jina biçel û zarokan dibe. Lê kêm be jî raseletî jinên ducanî, bûkan, mêr, rêwî û hespan jî dibe. Li Anadolê ji wê re *"al, albastı, alkarısı, alanası, alkızı"* tê gotin.[289]

Pîra Xêw, li jinên ku zarokên wan ên piçûk hene, dibe bela. Wisa tê bawerkirin ku Pîra Xêw, ji bo ku xwe û zarokên xwe xwedî bikin kezeb û gurçikên jina zêristanî û zarokên wan dixwe. Ji bo ku pêşî li vê yekê were girtin, ava sûsê bi jinan didin vexwarin, lihêveke sor diavêjin ser jina zêristanî. Li Agiriyê jina ku zarok aniye heta çil rojî nahêlin ku jina ku di nav wî çil rojî de zarok anî be re were ba hev. Li gorî baweriyê, heger her du jin rastî hev bên, çilê jina ku pêşî zarok aniye dê derbasî jina ku dawiyê zarok aniye bibe. Wê gavê şîrê dayikê dê qut bibe, dê dayik û zarok nexweş bikevin. Heger bi şaşitî be jî li hevdu rast hatibin, hinek şeraba spî, genim û xwê davêjin ser agir û jina çilinî di ser wî agirî re radiwestînin da ku dûxanê wan li rûyê wê bikeve. Bawerî ew e ku bi vî rengî dê çilê jinan bi hev nekeve û jin û zarok dê werin parastin.

Li hin deverên Îran, Asyaya Navîn û Rûsyayê, ew hêzên nepen, wekî koma îblîsan jî têne binavkirin. Cinên welidînê, nahêlin ku mirov zêde bibin. Li gor baweriya berbelav, ew hêza nepen dehbeyekî sawdar e; nêvî mirov û nêvî jî cinawir e.[290]

## Boraqdayîn (wedandin) û belavkirina loqmeyan

Li gor şaristaniyan û serdeman heyberên pîroz diguherin. Xwedayê bahozê, xwedayê bereketê, xwedayê asîmanan, xwedayê rojê û hwd. Nav çi dibe bila bibe her gavê heyberek hebûye ku ji bo mirovan pîroz bûye û pê bawer kirine. Ji serdemên berê û heta niha mirov, ji ber nahmetên ku *Xweda/xwedawendan* daye wan, qurbanan ser jê dikin. Mircea Eliade ku dîroka olan vekolaye, derbarê boraqdayîn û qurbanên ji bo xwedayan de

289 Orhan Acıpayamlı, *Türkiye'de Doğumla İlgili İnanmaların Etimolojik Etüdü*, Türk Tarih Kurumu Basımevi, Ankara 1961.
290 Özhan Öztürk, "Al, Albastı, Alkarısı İnanışı", http://ozhanozturk.com/2017/11/20/al-albasti-alkarisi-inanisi/, (03.12.2018).

agahiyên girîng parve kirine. Li gorî Eliade, bi derketina olên yekxwedayî re, çanda boraqdayînê û qurbanan, li gorî normên ku pirtûkên pîroz diyar kirine, ji nû ve hatine sererastkirin.[291]

Li Tirkiyeyê û Rojhilata Navîn hema bêje li her derê ziyaret, tirbe û darine ku dora wan bi sêncan hatine girtin hene. Li Semsûrê jî bi dehan êrik û tirbe hene. Hin ziyaret û êrik hene ku bi heman navî li du-sê deverên cuda hene. Gel diçe serdana wan û ji bo wan boraqan qewl dike. Boraqdayîn yan wedandina qurbanan û daxwazkirina hin tiştan ya ji tirbeyan ne esaseke dînê Îslamê ye. Hîmê van rê û resman wan digihêje serdema paganîzmê lê îro jî hebûna xwe didomînin. Ji ber vê yekê car heye di navbera dîn, baweriyên civakê û dînên kitêbî de nakokî çêdibin. Li gor C. Gustav Jung, sedema vê yeke, pergala binhişî ya mirovan e. Ferd ango kes, çand û edetên civaka xwe ya bi hezar salan, di binhişiya xwe de dihewîne. Ji bo vê rewşê, têgeha *"binhişiya hevpar"* bi kar tîne. Mirov, li gor vê binhişiya hevpar tev digerin.[292]

Piraniya wedandina boraqan bi pêkanîn û baweriya *"xwînrijandinê"* ve tên têkildarkirin. Mirovan di dia û lavayan de çi soz (qewl) dabin, li gorî wî qewlî tev digerin. Li Semsûrê, boraqên ji bo serjêkirin û xwînrijandinê wekî *"qurban"* tên binavkirin û xurekên derî goşt jî wekî *"loqme"* tên binavkirin. Şekir, loqum, mewîj, biskuwît, birinc, sawar, xwarinên rohn û hwd. loqme ne.[293]

Li Semsûrê jî wekî herêmên din, ji ber pêşneketina tiba modern an jî bêderfetiyê piştî çêbûnê û demekê gelek pitikan jiyana xwe ji dest dane. Ev malbatên ku zarokên wan li pey hev dimirin, diçin ber êrik û ziyaretan. Li wir, ji bo ku zarokên wan nemirin dia dikin; boraqan qewl dikin; loqmeyan belav dikin. Gava piştî vê serdana ewil zarokek çêbibe û heta emrekî tiştek

---

291 Mircea Eliade, *Dinler Tarihi (İnançlar ve İbadetlerin Morfolojisi)*, Mustafa Ünal (Çev.), Serkat Kitabevi, Konya 2005.

292 Ülkü Kara Düzgün, "Giresun Adak Yerlerinde Tespit Edilen Çeşitli Uygulama, İnanış ve Efsaneler", *Uluslararası Sosyal Araştırmalar Dergisi*, 2009; 2 (7), r. 138.

293 Jêder: 14, 21, 35, 78, 102.

pê neyê û yeqîn bikin ku êdî tiştek pê nayê, ew boraqên ku berê qewl kiribûn tînin ser êrîk ango ziyaretê û wan serjê dikin.[294]

Li herêmê, çend taybetmendiyên qewlkirina boraqan hene:

Çi hatibe qewilkirin (wedandin), divê ew bê bicihanîn. Wek mînak, heger dîkek hatibe qewilkirin, divê dîk; heger gîskek hatibe qewilkirin divê gîsk bê serjêkirin.

Piraniya boraqan li malê tên xwedîkirin.

Divê boraq nêr be.[295]

Çerm, hûr û rêvî jî di nav de, tu lebatên boraqê nayên firotin. Divê bidin kesên feqîr an jî notirvanê (heger hebe) ziyaretê.

Hinek goşt didin notirvanên tirbeyê. Yên mayî jî tê biraştin û li mêvanan tê belavkirin. Goştê boraqê nayê hilanîn.

Boraq, ji bo kengî hatibe qewlkirin, wê çaxê tê dayîn. Boraq bi piranî payîzê tê dayîn. Lewra boraq heta wê demê qelew dibe û malbat jî kar û barên xwe yên çandiniyê û hilberînê diqedînin.

Heta ji dest bê divê loqme û boraq li gelek kesan bê belavkirin. Çiqas pir kes ji wî loqmeyî yan ji goştê wî boraqî bixwin dê xêr jî ewqas zêde be. Ji bo vê jî roja serdana ziyaretê pêş de tê diyarkirin û kesên ku dê bêne vexwendin pêş de têne agahdarkirin.[296]

## Pêkanîn û baweriyên bijîşkiya gelêrî di nexweşiyên serdema zaroktiyê de

Serdema zarokatiyê, serdemeke ku berteka laşê zarokan qels e û zarok nikarin nerihetî, nexweşîn û pêdiviyên xwe bînin ziman. Loma jî gelek caran nexweş dikevin. Nexweşînên zarokan du cure ne; yên dema welidînê û yên piştî welidînê. Yên dema welidînê, girêdayî cureya nexweşînê û asta wê ne. Hin nexweşîn hene ku mayinde ne; divê heta mirinê bi dermanan

---

294 Jêder: 70, 73, 91, 92, 121, 158, 161, 164.

295 Jêder: 4, 7, 13, 89, 120.
Di çanda Kurdan de gotineke pêşiyan heye, dibêjin, "Berxê nêr, ji bo kêr." Digel ku ev gotin gihandina zarokên lawîn ya ji bo şer nîşan bide jî li aliyê din ve bûyera Hz. Îbrahîm ya ku kurê xwe Îsmaîl wekî boraq daye jî tîne bîra mirov.

296 Jêder: 5, 29, 33, 40, 56, 62, 67, 103, 110.

bên dermankirin an jî bê derman in; wekî dînbûnê. Yên piştî welidînê, dibe ku ji ber hin qeza û nexweşînên vegir pêk bên. Nexweşînên vê serdemê piranî nexweşînên vegir in û ji ber kirêtî û mîqrob û wîrûsan çêdibin.[297]

Piraniya nexweşînan, bi destwerdanên pêşwext û hin tevdîran bi rihetî tên nojdarîkirin (dermankirin). Lêbelê gava nexweşîn di wext de neyên dermankirin an jî destwerdaneke çewt bê kirin, dibe ku ev nexweşîn bibin sedema enfeksiyon, hewal, sincirandineke zêde û hwd. Her weha dibe ku bibin sedema nexweşînên mayinde û heta sedema mirinê jî. Di *"serdema zarokatiyê ya pêşwext"* de ku ev serdem teqabulî navbera 0-8 salan dike, bar dikeve ser milê dê û bavan. Di vê serdemê de malbat hewl dide ku zarokên wan bi saxî û silametî, di nava aramiyê de bijîn, xew û xwarina wan bi rêk û pêk bin û hwd.[298] Lêbelê ligel hemû hewldanên dê û bavan, dîsa jî di vê serdemê de hin nexweşîn çêbibin. Li jêrê nexweşînên serdema zarokatiyê yên li Semsûrê û rêbazên bijîşkiya gelêrî hatine vekolîn. Wekî ku berê jî hatibû behskirin, gelek nexweşî bi du-sê navan têne penasekirin. Sedema vê yekê nebûna perwerdehiya bi rêk û pêk û taybetiyên devokên herêmî ne.

## Ser û binê heyvê/tûtmeyînî

Ser û binê heyvê ango tûtmeyînî yek ji nexweşînên berbelav ya serdema zaroktiyê ye. Zarok, ji ber kêmtaqetiya laşê xwe li hemberî enfeksiyonan qels in û mêyla wan ya nexweşketinê zêdetir e. Dayik, heger têra xwe guh nedin paqijiyê, zarok baş xweyî nekin yan kesên dedora zarok nexweş bin gumana ku bi ser û binê heyvê bikevin zêdetir e. Zarok emelî dibin.[299] Li gorî hin çavkaniyên jêder, *"carinan* şîr li zarokan nayê." Ji ber vê yekê

297 Ülkü Kara Düzgün, "Giresun Adak Yerlerinde Tespit Edilen Çeşitli Uygulama, İnanış ve Efsaneler", *Uluslararası Sosyal Araştırmalar Dergisi*, 2009; 2 (7), r. 138.

298 Melek Er, "Çocuk, hastalık, anne-babalar ve kardeşler", Çocuk Sağlığı ve Hastalıkları Dergisi, 2006; 49, r. 156-157.

299 Hülya Çakmur, "Çocuklukta Enfeksiyöz Diyare ve Dehidratasyon", *Kafkas J Med Sci* 2013; 3 (2), r. 96-102.

jî zikê wan diêşe, nava wan diçe, zarok vedirişin û jar dibin. Hin kes jî dibêjin ku *"sedema ser û binan dikevin serma ye."* Zarok ji zik û roviyên xwe sermayê digrin. Ew jî dibe sedema ku agirê canê zarokan bilind bibe, verişin û zikê wan biçe ango nava wan biçe, emel bibin. Di rewşeke weha de dibêjin, *"Zarok bi ser û binê hîvê ketiye."* û dibin bal hekîmên dermanên Kurmancî/Kurdewarî ku ew dikarin ser û binan hildin.[300]

Li gorî baweriya civakê têkiliya ser û binê bi heyvê re heye. Li gorî tevgera heyva li asîmanan di rewşa tenduristiya zarokan de jî veguherîn çêdibin. Zarok di serê heyva nû de nexweş dikevin û her ku heyv kevin dibe nexweşîn jî kêm dibe. Lewra divê di dema heyva nû xuya kir de ser û bin werin hildan. Pêkanîna ku di dema hildana ser û binan de tê bikaranîn weha ye:

Dema ku heyva nû li asîmanan xuya kir, kesê ku dê ser û binê zarok hilde rûdine, lingê xwe cot dike û dirêj dike. Êkmerdiyekê dide ser lingê xwe û zarok li ser dev û rûyan li ser wê êkmerdiyê dirêj dike. Pişta wî mist dide. Çermê pişta wî yê nêzîkê boçikê digre û heta ku deng jê hatiye berjor dikişîne.[301] Du sê caran vê pêkanînê dubare dike. Jêderek vê pêkanînê weha bi bîr tîne:

> "Ku kurik xwarinên nêrind dixwin, vedirişin, zikî wan dêşê. Me digo, 'bi ser û binê hîvê ketiye.' Ku diwû serê mehê, yanê hîv nû diwû, kurik li ser dev û rûya dirêj dikirin. Me bi her di pêçiyên pêşiyê ê her di destan bi çêrmî piştê wan digirt û yawişika dikişand. Digo, "qirç". Me çend caran heta cihê nermik ew dikşand. Me digot, "Bisîmîlahîrehmanîrehîm" û me dikişand. A xaş diwû."[302]

Li gorî bawerî û tecrûbeya civakê heger ew tamarên piştê werin kişandin êdî nava zarokan naçe, agirê canê wan ranabe û ew ê xwarina xwe bixwin. Pêkanîneke din jî ew e ku ji bo ku zarok bi ser û binê heyvê nekevin, hinek tenî (arî) di enî, gep û pişta zarokan didin. Hin kes jî bi teniyê li ser eniya zarokan şaneya xaçê çêdikin. Jêdereke ku ser û binan hildide, pêkanîna

300 Jêder: 1, 4, 5, 15, 21, 35, 44.
301 Jêder: 5, 16, 23, 33, 35.
302 Jêder: 1.

xwe weha vedibêje:

> "Ez Ocaxê ser û binê me. Wextê ku kurik bi ser û binê hîvê dikevin tînin cem min. Ez teniyê di heniyê wan didim. Hewik tenî jî li qolincên wan didim. Kurik, heta heft sala jî bi ser û binê hîvê dikevin."[303]

Li gorî jêdereke din, ji bilî eniya zarokan binê lingê zarokan jî tenî dikin:

> "Çêrmê piştê kurikan dikşandin, dikir xirpe xirp. Hewek tenî jî di binî ningê wî û heniya wî didan."[304]

Li gorî hin jêderan, zarok heyvê du caran bi ser û binê heyvê dikevin. Dema ku heyv nû dibe carekê û dema ku heyv kevin dibe jî carekê. Li gundê Narincê yê li ser Semsûrê, jinên ku ser û binê heyvê hildigrin nistiyeke din jî çêdikin. Piştî ku ser û bin girtin du qirşikên melkesê dixin destê xwe û di ser serê zarokê nexweş re dişkînin. Di dema şikandinê de dibêjin, *"Ser û bin, herin mêrikî du jin!"*[305] Vê gotinê sê caran dubare dikin û wan qirşikên ku şikandine bêyî ku pişt xwe binihêrin, di ser milên xwe re diavêjin pişt xwe. Piştre hinek tenî jî di bin lingê zarokan didin.

> "Zelxa Awî Elê, ser û bin dibiriya. Hîv nû û kevin diwû, kurik bi ser û binê hîvê diketin. Vedirşiyan, nav diçû. Darikik ya jî qirşikî sizikê di ser ra dişikand û digo, "Ser û bin, herin mêrikî du jin!" û hewik tenî di bin ninga dida. A me kurik tanî mal. Xaş diwû. Gi înakirin e."[306]

---

303 Jêder: 3.

304 Jêder: 16.

305 Dubarekirina vê hevokê, berteka civaka Elewî ya li hemberî bêdadiyên li dijî jinan diyar dike. Lewra tê zanîn ku Elewî bi çavekî baş li zewaca li ser jinê nanihêrin. Ji bilî nebûna zarokan, nexweşiya giran ya nav nivînan û mirina jinê, destûra zewaca cara duyemîn nîne. Heger mêr guh nedin vê kevneşopiyê ji aliyê civakê ve wekî "dûşkûn" (jirêderketî) têne îlankirin. Gel guh nade mêrên wiha. Ji bo agahiyên zêdetir, binêrin: Fevzi Rençber, "40 Soruda Alevilik", *Türk Kültürü ve Hacı Bektaşı Veli Dergisi*, 2010; 56.

306 Jêder: 8.

Ji bo ser û binê zarokan, li gundê Qirxliya Gewrik, hekîmê dermanên Kurmancî, Qudê, zarokan li pêşiya xwe, li ser piştê dirêj dike. Bi lingê çepê yê zarok digre û digihîne milê rastê; lingê rastê jî digre û digihîne milê çepê. Vê pêkanînê du sê caran dubare dike. Bi vî rengî ser û binê zarokan hildide.

"Navê kurikan diçû, vedirşiyan. Serê mehê û binê mehê diwû. Diwirin gundî Qirxliyê, Ocêx. Ling û dest çepraz didan ser hev, didewisandin. Digotin, 'me kurik, ser û bin kir.' Paşê xaş diwû."[307]

Di rewşa verişîn û navçûyîna zarokan de pirsgirêka herî mezin ew e ku zarok bê av û bê xwarin dimînin. Wekî ku ji jêder û pêkanînan tê fêmkirin gelek zarokan ji ber vê nexweşiyê jiyana xwe ji dest dane.[308] Lewra di nav van pêkanînan de hewldana têrkirina zarokan ya ji aliyê av û xwarinan de nîne.

Niha pêkanînên bi vî rengî di nav gel de nemane yan jî gelekî kêm bûne. Gel di vê mijarê de hişyar bûye. Gava nava zarokan biçe tiştên rohn û avî didin wan.

Li hin herêman ji xeynî kişandina tamarên piştê, kesên biocax tenê teniyê di enî û ser milên zarokan didin û bi vî awayî hewl didin ku pêşî li navçûyînê bigrin. Her weha hin ocax ji xeynî ser mil û eniyê, teniyê di bin lingên zarok jî didin, direvşên (remz) wekî xaçê çêdikin. Ev pêkanîn xaça Xaçperestan tîne bîra mirov. Ev jî nîşan dide ku li Semsûrê hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî yên beriya Îslamiyetê piştî Îslamiyetê jî dewam kirine. Pêkanîneke bi vî rengî li Diyarbekirê jî heye: Li gorî baweriya gel, Pîra Xêw tenê dijminatiya misilmanan dike. Gel jî bi vê yekê dizane. Loma dema ku zarok çêbû bi teniyê xaçekê li ser eniya zarok çêdikin. Bawerî ev e ku bi vî rengî zarok wekî xaçperest têne nîşandan û ji mirinê têne rizgarkirin.[309]

## Çilderxistin/Çelderxistin

Çilderxistin, yek ji pêkanînên bijîşkiya gelêrî ye ku ji bo parastina dayik û zarokan a ji xirabiyên Pîra Xêw tê kirin. Li gor

307 Jêder: 23.

308 Jêder: 6, 19, 27, 30, 54, 66, 67, 105, 128, 129.

309 Kızıl, *Diyarbakır ve Çevresindeki Dini Anlayışta Mitolojik Unsurların Etkisi*, r. 180.

hin lêkolînan Pîra Xêw, wekî *"Dîtina xeyalan a ji ber sincirîn û derbaskirina hawaleya dayikê ku ji ber vegirtina enfeksiyona piştî zarokanînê derdikeve holê"* tê şîrovekirin.[310] Lewra, di vê serdemê de dayik dibetile, xwîn jê diçe, bêtaqet dimîne; ji ber mêjandina zarok navgînên xwîna wê kêm dibin. Ew jî rê li ber enfeksiyon û sincirîna laş vedike. Li gorî baweriyê, cin, dehbe, pîra xêw û hwd. heyberên xêw li dora dayikê û zarok kêm nabin. Jiyana wan di bin xetereyê de ye. Malbata dayikê jî -wekî tevdîrekê- heta çil rojî terka wan nakin.[311] Gava Pîra Xêw bigihêje armanca xwe dayik an jî zarok dimire.[312]

Serdema çilîniyê/zêristaniyê kêm zêde 6 hefteyan diajo. Ango nêzî çil rojî diajo. Çobanoğlu, li ser vê mijarê di navbera sala 1993-2003yan de bi piştgiriya xwendekarên Beşa Ziman û Edebiyata Tirkî û Beşa Folklorê ya Zanîngeha Hacettepeyê, lêkolînek kiriye. Di vê lêkolîna navborî de Pîra Xêw, wekî *"dehbeyeke ku bi kezeb û gurçikên zarokan, jinên çilînî û pitikan xwe xwedî dike"* hatiye destnîşankirin. Di vê xebata navborî de tê gotin ku ji bo pêşî li vê dehbeyê (Pîra Xêw) bê girtin, jinên çilînî ava sûsikê/meyanê dixwin. Seraxeke sor (betanî, rûber, çarşef û hwd.) diavêjin ser dê û pitika wê. Wan bi tenê nahêlin.[313]

Beydili, di Ferhenga Mîtolojiyê de ji bo Pîra Xêw, diyar dike ku li Tirkiye û Rojhilata Navîn pir tê dîtin û navine wê yê cuda hene.[314]

Kalafat jî di xebata xwe de, angaşt dike ku baweriya bi Pîra Xêw û rewşa çelîniyê xwe dispêre baweriya Şamanîzmê.[315]

---

310 Değer, Deveci, *Kadınların Doğum Sonrası Uyguladıkları Geleneksel Yöntemler*, r. 23.

311 Ayşe Başçetinçelik, *Adana Halk Kültüründe Doğum, Evlenme, Ölüm*, Adana Büyükşehir Belediyesi Yayınları, Adana 2009, r. 80-115.

312 Jêder: 1, 2, 4, 7, 12, 16, 40.

313 Özkul Çobanoğlu, *Türk Halk Kültüründe Memoratlar ve Halk İnançları*, Akçağ Yayınları, Ankara 2003, r. 124.

314 Celal Beydili, *Türk Mitolojisi Mitolojik Sözlük*, Yurt Kitap Yayın, Ankara, 2003

315 Yaşar Kalafat, "Doğu Anadolu'da Kara İyeler ve Onlara Dair Halk İnançları", *Türk Kültür Araştırma Enstitüsü Dergisi*, 2012; r. 175-202

Hin jêder bi hebûna Pîra Xêw ne bawer in.[316] Li gorî jêderên ku bi hebûna wê bawer dikin, Pîra Xêw xwediyê hin taybetmendiyan e:

- Carinan xwe wekî kalekî rihdirêj nîşan dide. Riha wî digihêje erdê.
- Gelek caran wekî pîreke porgijik ku memikên wê digihêjin erdê xuya dibe.
- Heybereke gezgezokî, xwînmij û nedîbar e; ji nişka ve xuya dibe û wenda dibe.
- Kincên spî lê ne.
- Tevî tevir û bêra xwe digere; êrîşî jinên çilînî û pitikên wan dike.
- Gel, wê nas dike, jê ditirse.
- Haya gel ji hêlên wê yên qels jî heye. Pîra Xêw, ji qelebalixiyê, ji mêran, ji hesin û ronahiyê ditirse. Ji ber vê jî gel hin tevdîran digre. Her weha ji bo ku zirar negihêje dê û pitika wê, di roja bîstan û çilî de rê û resmeke çelderxistinê tê lidarxistin.[317]

Jin û ocaxên ku rê û resma çelderxistinê li dar dixin hene: Roja bîstan, pitik û dêya xwe diçin mala jina ku çel derdixe an jî gazî wê jinikê dikin. Ji bo çelderxistinê pitikê dixin leganekê û bi *"tasa çêl"* an jî *"tasa hecê"* serê pitikê û diya wê dişon. Li ser vê tasê ayetên Quranê hene. Pitik di hundirê leganê de didin rûniştandin van gotinên li jêr dubare dikin:

> "A deh, a bîst, a sîh, a çel.
> Çelê mişk û maran,
> Ê cin û cinawiran...
> Ê giya çû, ê te jî çû."[318]

Piştre ew ava ku li ser hatiye xwendin bi serê zarok de dikin. Piştre, heman tişt ji bo jina zêristanî jî tê dubarekirin. Ava ku pitik û diya wê pê hatine şûştin, li hundirê malê, li ser banî û li

316 Jêder: 10, 19, 40, 44, 50, 129.
317 Jêder: 1, 8, 12, 27, 113, 130, 137, 139, 141, 159.
318 Jêder: 4, 12, 20, 82.

dora xanî tê reşandin. Tê bawerkirin ku pitik û diya wê bi vî hawî ji Pîra Xêw tê parastin. Destmizekê didin jina ku çel derxistiye û bi vî hawî rê û resm bi dawî dibe. Li hin deveran piştî vê rê û resmê loqme tê belavkirin. Ev pêkanîn di roja bîstan û roja çilî de tê dubarekirin.[319]

Li Kolikê, rê û resmên çelderxistinê bi navê çelê sisiyan, çelê heftan, *çelê bîstan* û çelê çilinî çar caran tê dubarekirin. Rê û resmên çelderxistinê yên roja sisêyan û roja çilî dişibin hevdu: Jinên malbatê tên cem hevdu. Di du beroşan (sîtil) de avê germ dikin. Pêşî ji ocaxa çelderxistinê jinek serê jina çilînî dişo. Piştre, pitikê dixe hembêza dayikê û wê jî dişo. Roja sisêyan sê; roja çilî jî çil kevir tên hejmartin û diavêjin hundirê sîtilê. Jina biocax her du destên xwe vedike û bi ser avê dixe. Bêjingekê tînin û didin ser serê dê û pitika wê. Ava di sîtilê de tevî keviran bi ser serê dê û pitika wê de tê rêtin.[320] Tê bawerkirin ku piştî rê û resma roja çilî xetereya mirinê û nexweşînê li ser dê û pitika wê radibe. Dê û pitik piştî roja çilî dikarin bi tena serê xwe rakevin; dikarin bi tena serê xwe ji malê derkevin; ew û jinên ku di heman demê de zarok anîne dikarin hevdu bibînin.[321]

Ew pêkanînên xwe parastina ji Pîra Xêw kêm zêde li herêma Agiriyê jî hene. Li wir jî heta çil rojî nahêlin ku jinên çilînî hevdu bibînin. Tê bawerkirin ku heger jinên zêristanî -bi rasthatinî be jî- leqayî hev bên, wê çilê wan tevlihev bibe, wê zarok ji şîr vebe û ew ê nexweş bikeve. Ji bo ku ev yek çênebe jinên çilînî derzî an jî şewkan bi xwe re digerînin û gava tiştekî weha çêbibe derzî an jî şewkên xwe pevre diguherînin.[322]

### Danûya Diranan

Di nav çanda civakên Anadolê de derketina diranê zarokan yê yekemîn, wekî bûyereke girîng tê pejirandin. Cihê şahî û

319 Jêder: 5, 8, 12, 23, 32, 94.
320 Mahmudê Hesbêra, "Li Kolikê Hin Edet û Baweriyên Piştî Jidayikbûnê", *Nûbihar*, 2019; 146, r. 88-92.
321 Jêder: 86, 130, 136, 139, 147, 162.
322 Arslan, Çetinkaya, Taşbaşı, "Türk Kültürü Bağlamında Ağrı İli Alkarısı İnanmaları", r. 208.

bextewariyê ye. Malbat, ji bo ku vê bextewariya xwe bi der û cîranên xwe re parve bikin serî li hin pêkanînan didin. Yek ji van çêkirina "danûya diranan" e. Danû, xwarineke taybet e. Piştî ku diranê zarokan yê yekemîn dertê ev xwarin ji aliyê dayika zarok ve tê çêkirin û belavkirin. Giraniya vê xwarinê li ser nok û genim e. Şevekê pêş de nokan û genim dixin nav ava sar. Êvara din nok û genimê nepixî ji nav avê derdixin û dixin nava beroşekê. Hinek av dixin ser û dikelînin. Di taweyeke piçûk de pîvazan hûr dikin û di nav rûn de sor dikin. Piştre hinek ava balicana jî tevlê dikin û hinekî jî wisa sor dikin. Hinek îsotên hûr ên sor û cahtirî jî lê zêde dikin. Ew sosa ku hatiye amadekirin berdidin ser genim û nokên ku pijiyane.[323] Piştre malên ku dê xwarin lê bê belavkirin dijmêrin û şîvê dixin teyfikan. Dema ku şîvê dibin mala cîran û merivan (xizman) sedema belavkirina vê xwarinê vedibêjin. Ew kesê ku danû hildaye jî diyariyekê ji zarok re dikire yan hinek pere dixe firaqa ku danû tê de hatiye.[324]

> "Ki dadanên kurikan ê siftê dertên, daniyê bela dikin. Diwên, 'Va danûya lawikî/keçikê me ye. Didanên wî/ê derketin.' û bela dikin. Hewkê jî didin dest kurik/keçikê, sewê ku xa pê hu (hîn) bike. Ê ki daniyê diwin jî diwên, 'Xadê xêrli, nefli bike!' û hediyakê ya jî perena didin kurik."[325]

Genim û nok du remz in. Genim, remza zêdahî (bereketê), xweşikî û qismet e. Nok jî remza xurtbûnê ye. Li gorî baweriyê, ji bo ku diranên zarok jî wekî hebên genim bi ber û xweşik; wekî seriyê genim rêzkirî bin û wisa xurt bin ku karibin nokên hişk jî bişkînin, danûyê çêdikin.[326]

Divê diranê zarokan di dema xwe de derkevin. Ji bo ku ev yek pêk bê serê zarokan hine dikin.[327]

Li herêma Amed û Batmanê pêkanîneke cuda ya danûyê

---

323 Mehmet Öncü, *Cemile Adıyaman Mutfak Kültürü*, Tekin Çifçi (Edit.), ATAV Yayınları, Adıyaman 2015, r. 127.

324 Jêder: 92, 105, 108, 115.

325 Jêder: 1, 5.

326 Jêder: 16, 17, 20, 43, 53, 68.

327 Jêder: 12, 19, 43, 58.

heye. Li van deran jî genim û nok tên kelandin. Piştre, genim û nok tên dawerivandin û sarkirin. Zarok datînin ser sifreyekê. Sifreyekê jî bi ser serê zarok de berdidin. Ew danûya ku hatiye dawerivandin û sarkirin bi ser serê zarok de dirijînin. Paşê jî meqes, pênûs, neynik, pirtûk, pere, pêlîstok hwd. datînin ber zarok. Tê bawerkirin ku zarok ji van tiştan kîjanî hilbijêre wê di pêşerojê de bibe xwedî wî pîşeyê ku amûra wê hilgirtiye. Mêvanên ku ji bo *"danûyê"* hatine vexwendin, ji danûyê dixwin. Mêvan jî diyarî yan jî pere didin zarokan.[328]

## Çavînîbûn (Çavlêketin)

Hinek tişt, rewş û pêkanîn hene ku ji aliyê tiba modern ve wekî nexweşiyê nayên pejirandin lêbelê ji aliyê gel ve wekî nexweşîn û pirsgirêk têne pejirandin. Yek ji van çavlêketin ango çavînîbûn e. Çavînîbûn an jî çavlêketin bi tiba modern nayê ravekirin. Peyva çavînîbûnê, di wateya çav û dîtineke xirab de tê bikaranîn. Çavînîbûn, encam û akameke bawerî, fikr û tevgerên gel e.[329]

Hin zanyar, koka pêkanînên ji bo pêşîlêgirtina çavînîbûnê dispêrin baweriya Şamanîzmê. Li gorî baweriya Şamanîzmê, rihekî xirab qencî û siûd diziye. Tê bawerkirin ku mirov bi helandina gule/zirîçê dikarin qencî û siûda ku ji aliyê rihên xirab ve hatiye dizîn ji wan bistîne.[330]Ji ber vê yekê jî dixwazin ku tişt û kesên li ba wan hêja ne ji çavînîbûnê biparêzin. Li gorî baweriya gel çavînîbûn, him xisarê dide malê wan him jî û canê wan. Wek mînak, dibe ku zarokekî xweşik û spîsax ji ber *"çavên xirab"* nexweş bikeve û bimire. Gundî dibêjin ji ber çavînîbûnê heywanên wan mirine, çandiniya wan û hilberînên wan zirar dîtine.[331]

328 Jêder: 163.

329 Orhan Türkdoğan, *Toplumsal Yapı ve Sağlık- Hastalık Sistemi*, IQ Kültür Sanat Yayıncılık, İstanbul 2006, r. 90.

330 Abdulkadir İnan, "Müslüman Türklerde Şamanizm Kalıntıları", *Ankara Üniversitesi İlahiyat Fakültesi Dergisi*, 1952; 1 (4), r. 29.

331 Jêder: 7, 40, 43, 44, 61, 77, 103, 115.

Ji berê heta niha mirov tim û tim ji çavînîbûnê ditirsin. Li herêmê, gelek kes bawer dikin ku di çavên hin mirovan de enerjiyeke taybet heye. Ev kes gava tiştekî pir bixwazin, an jî çavnebariyê bikin û nikaribin bi dest bixin, wê enerjiyê wekî tîrêjekê dişînin û bi vî awayî zirarê didin wî/ê kesî/ê yan jî wî/ê heyberê. Yê ku çavînî bûbe amûr be dişikê; sewal be nexweş dikeve an jî dimire; berekî çandiniyê be, li gorî demsalê agir pê dikeve yan jî zîpik lê dixe, li ber ba û bagerê dikeve diçe an jî nexweşî lê dikeve. Heger mirov be nexweş dikeve, birîndar dibe yan jî bobelateke din tê serî.[332] Loma pêkanînên ji bo pêşîlêgirtina çavînîbûnê roja mirov çêdibe heta mirinê didomin.

Di gelek kevneşopî û çandan de, ji bo tûjbûn û harbûna bêhna pîvaz û sîrê baweriyek heye. Li gor vê baweriyê, di bêhna wan de nistiyek/tilsimek heye. Loma, di dermankirin û çareserkirina gelek nexweşînan de pîvaz û sîr tên bikaranîn. Yek ji vana jî çavînîbûn e. Pîvaz û sîr, bi deriyên malan an jî bi deverine din yên malan ve tên daliqandin û tê bawerkirin ku pîvaz û sîr kesên li malê ji rihên xirab û çavînîbûnê disitirînin.[333] Di dema Osmaniyan de, piştî zayînê, memikên dayikê dihat şûştin û bi felqê pîvazên xav dihatin firkandin. Piştre, felqên pîvazan tevî sîr û şînmorîkan di şîşê re dihate derbaskirin û heta çil rojî li ber lingê jina zêristanî dihate daliqandin. Wisa dihat bawerkirin ku bi vî rengî dayik û zarok ji heyberên xêw û çavên xerab tê parastin.[334] Niha jî li gelek gundên Semsûrê li ber deriyên malan gurzikên pîvazan ên daliqandî têne dîtin. Li Semsûrê, ji bo kesên ku tê gotin çavînî bûne, xwê dixin nav qalikê pîvazê û li dor serê kesê nexweş digerînin. Piştre ew qalikê pîvazê tevî xwê di nav agir de tên şewitandin. Tê bawerkirin ku pîvaz û xwê çav, hest û xwestekên xerab ber bi xwe ve dikişînin. Gava pîvaz û xwê tên şewitandin ev xerabî jî bi wan re dişewitin.[335]

Li dijî çavînîbûnê rêbazeke din ya berbelav helandina qurşûnê/guleyê ye. Dema ku kesek -bi taybetî jî zarok- ji nişka ve

---

332 Jêder: 8, 9, 25, 22, 38, 40, 56, 69, 80, 100, 121.

333 Jêder: 2, 7, 13, 16, 25, 31, 37, 45, 50, 62, 73, 80.

334 Deniz Gezgin, *Bitki Mitosları*, Sel Yay., 2. Baskı, İstanbul 2010, r. 170.

335 Jêder: 13, 19, 24, 36, 48, 99, 156.

(bi carekê ve) nexweş dikeve, tê bawerkirin ku ew kes çavînî bûye. Ji bo ku bandora çavînîbûnê bê şikandin, ji aliyê kesên "pispor" ve gule ango qurşûn tê helandin. Barûda nav guleyê vala dikin. Guleyê di nav firaqeke kevin de (piranî taweya biboçik e) dihelînin. Kesê/a ku çavînî bûye didin rûniştandin û buxçeyekî di ser serê wî/wê re vedigrin. Leganekê ava sar dixinê û di serê kesê/a nexweş re digrin û bêjingekê jî didin ser. Wê guleya germ û helandî di ser bêjingê re bera nav avê didin. Guleya ku dikeve nav avê di cih de sar dibe û teşe digre. Kesê/a ku gule rijandiye teşeyê ku çêbûye şîrove dike. Li gor wî teşeyî kesê ku çavînî kiriye texmîn dike. Kesê/a ku çavînî bûye jî ji bandora nexweşiyê, tirsê û hwd. xelas dibe.[336]

Li gorî bawerî û nêrîna gel mirovên çavnebar, kesên baş û lihevhatî, zarokên xweşik; dar û çandiniyên bi ber di serî de her tiştî dikarin çavînî bikin. Bi taybetî kesên, neşûştî û çavşîn çavê wan xerab e. Ew zûtirîn dikarin çavînî bikin.

> "Ê neşûştî meriya çavînî dikin. Mi -sewê ki çavînî newim- darê kenêrkê kun dikir, dikir histûyê xwe. Carna jî bi piştê va nezer direviya. Li pê (kesê ku çavînî dike) herin; axê ku pê lê kiriye, ûnin têxin nav avê û wê avê vexwin. Hen jî diwên hewik xwê û pîvazekê bavên ser xêni. Sewê ki çav lê bireve. Hen jî navî 12 îmaman dihêmcêrin, diya dikin. Êkcaran nifiran jî dikin. Diwên, 'kê çavînî kiriye, bira çavên wî derkevin."[337]

Hin kes ji bo çav û nezera li ser xwe kiş bikin, navê 12 îmaman dijmêrin; hin nifiran dikin, hin jî darkenêra dixin stûyê xwe û hwd. Malbat, ji bo ku zarokên xwe yên gelekî xweşik û lihevhatî ji çavan biparêze nivişt û şînmorîkên heftqulî bi milê zarokan ve dadiliqînin. Ji bo ku mala xwe ji çavên xerab biparêzin amûrên wekî nal, qiloçên pezkoviyan û pîsiyê bi berewa malê ve dadiliqînin. Şînmorîkan bi sitûyê sewalên xurt û qelew ve dadiliqînin. Nivîsên "maşallah" bi dîwaran ve dadiliqînin. Heman kevneşopî û pêkanîn li herêmên din jî heye.[338]

336 Jêder: 4, 10, 19, 21, 42, 66, 70.
337 Jêder: 10.
338 Jêder: 13, 71, 92, 129.

Kesên ku pîr in lê li gorî hemtayên xwe xwediyê tenduristiyeke baş in, ji bo ku çavînî nebin serî li derewan didin. Li bal kesên ku ji wan dikevin şikê ku dikarin mirovan çavînî bikin, xwe wekî nesax nîşan didin. Dikulin, xwe piştxûz dikin, dinalin û hertim behsa êşên xwe (yên tunebûyî) dikin.[339]

Dayik ji bo ku çav li zarokên wan nekevin, çavşînkan bi cil û bergên (carinan jî bi eniyê ve) zarokên xwe ve girêdidin. Cilên qetandî û kevin li zarokên xwe dikin. Heger maldar bin jî cilên kevin li xwe dikin. Berî ku kesên bi guman werin mala wan yan zarokên xwe ji malê dûr dixin, yan jî ser û çavên zarokên xwe bi zanetî gemarî dikin da ku xweşikiya wan were veşartin.[340]

Li herêma Semsûrê hin pêkanînên din ên xweparastina ji çavînîbûnê weha ne:

> "Darikî benîştokê kun dikin û dikin histî xa."[341]
> "Axê bin ningî î ki çavînî kiriye, radikin; dikin avê û vedixwin."[342]
> "Hewik xwê û pîvaz davên ser xêni/sêlê/siweyê/êr."[343]
> "Qafikê (hestiyê serî) ajalekî/ê di nava çandiniyê de didaliqînin."[344]

Her weha dibêjin ku, *"Kê çavînî kiriwe bira çavên wan derên/birijin"*. Kespikan dixin sitûyê heywanan. Li baxçeyan, malan, wesayîtan yanî bi tiştên tê xwestin ji çavînîbûnê bên parastin kespik tên daliqandin. Dikandar, diaya bereketê û diaya nezerê (çavan) li dikanên xwe dadiliqînin.[345]

Li pêşiya deriyên mal û baxçeyan nal, quloçê pezkoviyan, qerqotê heywanan, pîvazên hişk, pîsîtiya heywan û mirovan di nav potekî de tên daliqandin. Li nav erdan de jî şaxeke darsincê tê jêkirin û çandin. Li pêşiya baxçeyan zî (sitrî) tê çandin.

---

339 Jêder: 5, 14, 27, 33, 40.
340 Jêder: 17, 31, 49, 65, 71, 79.
341 Jêder: 18.
342 Jêder: 34.
343 Jêder: 3, 8, 16, 136.
344 Jêder: 13, 71, 92, 129.
345 Jêder: 6, 19, 24, 30, 38, 90, 100, 150.

Ji ber ku darsinc û zî bi strî ne, tê bawerkirin ku gava kesek bi çavekî xirab mêze bike ev strî di çavê wan re radibe û pêşî li çavînîbûnê digire. Piştî her pesindana zarokan ya ji aliyê kesê *"biçav"* re dibêjin, *"Bê Maşella!"*[346].

Acıpayamlı, diyar dike ku li Anadolê ji bo rakirina bandora çavînîbûnê pêkanîna herî berbelav ku tê kirin, gulehelandin (zirîçhelandin) e û dibêje, *"Jinên destûrdar û biocax guleyê dihelînin."* Acıpayamlı, balê dikişîne ser tecrûbeyên jinan ên ji bo helandina guleyan û dibêje,*"Jinên bi vî rengî, tim û tim ligel wan çenteyek heye. Di çente de ji bo helandina guleyê tawe, tasa avê, pêşmalkeke paqij û hinek gule heye."*[347]

Pêkanînên ji bo parastina ji çavan û çavînîbûnê li gelek deveran hene. Wek mînak: Li Erzinganê (Erzincan) ji bo zarokan ji çavên xerab biparêzin nivîştan çêdikin. Şînmorîkên heftqulik bi xwe re digerînin. Nivîsên "Maşella" bi derî û dîwarên mal û dikanan ve dadiliqînin.[348]

Li herêma Antalyayê, kesê ku çavînî bûye li ser piştê dirêj dikin. Bi paçik yan destmaleke paqij ser çavên wî dinixumînin. Hinek nan, pîvaz, meqes, kêr, neynik û tasek av didin ser tepsiyekê. Qurşûna ku hatiye helandin di ser serê wî/ê re valayî tasê dikin. Heman pêkanînê di ser navik û lingan re jî dubare dikin. Herî dawî qurşûnê li cihekî rast vala dikin. Li teşeyê ku çêbûye dinihêrin; şîrove dikin. Piştre kesê ku, tê bawerkirin ku çavînî bûye ji wê ava ku qurşûn di nav de sar bûye qurtekê vedixwe û ser û çavên xwe dişo. Ava mayî jî li hundir û derdora malê direşînin.[349]

---

346 Jêder: 2, 8, 65, 66, 72, 80, 93, 97, 98, 116, 130, 132, 141.

347 Orhan Acıpayamlı, "Anadolu'da Nazar ile İlgili Bazı Adet ve İnanmalar", *Ankara Üniversitesi Dil ve Tarih Coğrafya Fakültesi Dergisi*, 1962; 20 (1-2), r. 6.

348 Abdurrahman Küçük, "Erzincan ve Çevresindeki Halk İnançlarına Toplu Bakış", III. *Milletlerarası Türk Folklor Kongresi Bildirileri, IV. Cilt, Gelenek, Görenek, İnançlar*, Başbakanlık Basımevi, Ankara 1987, r. 243-255.

349 Huriye Emen, "Gazipaşa'daki Geçiş Dönemi ve Halk Hekimliği Pratiklerinde Orta Asya Türk Kültürü ve İnanç Sisteminin Tesirleri", r. 29-43.

**Pêkanînên Dema Jêkirina Por û Neynûkan**

Li herêma Semsûrê û derdora wê derbarê jêkirina por û neynûkên zarokan de, digel ku hinekî kêm bûne jî, hin bawerî û pêkanîn hene. Di mijara neynûkan de pêkanîna herî berbelav heta salekê jênekirina neynûkên zarokan e. Wisa tê bawerkirin ku heger neynûkên zarokan zû werin jêkirin *"ne baş"* e. Di paşxaneya vê peyva *"ne baş"* de çend bawerî hene. Yek jê ew e ku zarokê piçûk li dijî çil, Pîra Xêw, cin û pîrebokan bi neynûkên xwe li ber xwe didin.[350] Baweriya din jî ew e ku heger neynûkên zarokan zû werin jêkirin dê zû qert bibin û xwar derkevin.[351] Her weha, li gorî baweriyeke din, neynûkên zarokan heta salekê ji aliyên ferişteyan ve têne jêkirin. Loma jî ne hewceyî jêkirinê ne.[352]

> "Nênûgên kurikan êvarê nên lêkirin; bi şev nên lêkirin; êvarê îniyê yanê royê pênşemê nên lêkirin, guneye."[353]

Her weha êvaran û bi şev neynûk nayên jêkirin. Di bin vê pêkanînê de hişmendiyek û tecrûbeyek heye. Berê, ceyran û amûrên din ên teknolojîk tunebûn. Mirov, êvarê li ber agirê kuçik û sobeyan rûdiniştin. Gel, ji bo ku pêşiya xwe û derdora xwe bibîne lampe û çire bi kar dianî. Ji ber ku ronahiya wan kêm bû, bi kotekî pêşiya xwe didît. Di rewşeke weha de jêkirina neynûkan dê xetereya jêkirin û birînkirina tiliyan bi xwe re bîne. Ji ber nazikbûna neynûkan ew xetere ji bo zarokan zêdetir e.

Ji aliyê din ve jêkirina neynûkên zarokan piranî ji aliyê endamên malbatê -ji bilî dayikê- ve tê kirin. Lewra, dayik ditirsin ku di jêkirina neynûkan de xeletiyekê bikin û zarok biêşînin. Dema ku neçar dimînin jî dema ku zarok di xew de ye neynûkên wan jêdikin.

Gelek malbat hene ku zarokên wan di temenê piçûk de jiyana xwe ji dest didin. Bi gotina jêderan zarok *"êfle nabin"* û *"xêrê li*

350 Jêder: 16, 17, 20, 43, 48, 53, 68.

351 Jêder: 92, 105, 108, 115.

352 Jêder: 57, 62, 73, 74.

353 Jêder: 73.

*xwe nabînin"*. Li gorî baweriyê ew zarok, ji aliyê hêzên nepen yên wekî cin, cinawir, pîrebok, Pîra Xêw, çil, teyrik û hwd. ve têne kuştin. Bi taybetî jî zarokên kur. Malbat, ji bo ku zarokên wan nemirin rê û rêbazên xapandina van heyberên xêw diceribînin. Yek ji van rêbazan jî nîşandana lawikan ya wek keçikan e. Heger porê lawik heta heft salan jê nekin, dê porê wî dirêj bibe û wekî keçikan xuya bike. Ew ê bi vî rengî ji *"xişm û xezeba"* heyberên xerab xelas bibe.[354]

> "Sewê ku lawik nemirin kincên xa lê nakin, heta heft sala porî wî lê nakin. Ên ku lawikên wan çend berên keçik şûnda ya jî dereng çêdiwûn, ji kêfa ra bang li gewenda dikirin; li dol û zirnê dêxistin."[355]

Piştî ku zarok bê qeza û bela heft salên xwe bi serî kir, di demeke guncav de bavê lawik gazî porbir dike. Nas û dostên xwe vedixwîne mala xwe. Bi rê û resmeke wekî şahiyeke piçûk, porbir porê zarok jê dike. Porê wî diwezîne. Bavê zarok li gorî giraniya wî porî bexşîşeke hêja dide porbir. Li zarokên derdorê û taxê jî şêraniyê belav dike. Serê zarok dişon û cilên nû -vê carê yên zilaman- lê dikin. Loqmeyê ku hatiye çêkirin, kesên amade, bi hev re dixwin.[356] Li gorî nêrîna civakê porê dirêj, nîşana jinan e, porê mêran kin dibe. Civak -çi jin dibe, çi mêr dibe- bi çavekî baş li mêrên ku porê xwe dirêj dikin nanihêre. Di binhişiya vê tevgerê de nakokiya zayenda civakî heye. Rê û resma porbirînê tenê ji bo carekê tê pêkanîn.

Heman pêkanîn li Xarpêtê jî heye. Jinên ku keçikên wan hene, lê lawikên wan tunene an jî gava zarokên wan ê kur çêdibin, heta heft saliyê porê wî dirêj dikin, dihûnin û heta vî emrî kincên keçikan li wan dikin. Navê vê pêkanînê *lixwekirina vacî* ye. Di vê pêkanînê de kincên ku heft salan nehatibin lixwekirin li zarokan nayên kirin.[357]

---

354 Jêder: 6, 17, 24, 50, 89, 94, 124.

355 Jêder: 9.

356 Jêder: 12, 16, 19, 20.

357 Makbule Tokur Kesgin, Hilal Özcebe, "Türkiye'de Çocuk Bakımındaki Geleneksel İnanç ve Uygulamalar", *Hacettepe Üniversitesi Türkiyat Araştır-*

Ev pêkanînên ku li jor behsa wan hat kirin hemû ji bo xapandina heyberên xêw e. Wate ew e ku peyama, *"Ev ev zarok ne lawîn e û ne yê me ye."* Ango *"Em feqîr û reben in, têkilî me nebe."* ji heyberên nepen re were şandin.

## ZEWAC

Zewac bi xwe yek ji kevneşopiyên girîng yê civakê ye ku her gava wê bi rê û resman pêk tê. Wekî tê zanîn, ji bo berdewamiya nifşan pêdivî bi zarokan heye. Ew jî ji berê heta niha di bin sehêtiya (qontrol) civakê de pêk tê. Li her devera dinyayê -li gorî zagon û kevneşopiyên herêmî- zewac di bin hin şert û mercan de, li gorî kevneşopî, hest û nêrînên civakê dimeşe.[358]

Ji bo zewaceke bi rêk û pêk, pêvajoyeke dirêj divê. Ew pêvajo bi hevdîtin û xwestina keçikê ya ji aliyê malbata lawik ve dest pê dike û heta vegera zeyiyê ya bûkê ya piştî dawetê didome. Zewac, bi awayekî erêkirina destpêka jiyaneke nû ye. Ew pêvajo jî li gorî rêzikên civakê yên nenivîsandî dimeşe. Ji bo tenduristî û aramiya civakê û kesan divê pêvajo gav bi gav û eşkere bimeşe. Ji bilî pêhesandina civakê her gava ku bi dizî bê avêtin, jiyan û tekiliyên kesan ên bi civakê re dixe bin xetereyê. Kesên ku derketine derveyî vê rêzikê bûne sedema mişextî, qaçaxî, mirin û kuştinan. Berî ku zewac pêk bê bi dorê ew gav têne avêtin: Hevdîtin û hevnasîn, xwestin, bir, şêranî, rehêl, hine, mehrbirîn. Piştre jî dawet û zîfaf tê. Pêvajoya zewacê bi vegera bûkê ya ji zeyiyê diqede. Li jêr ev pêvajo, di çarçoveya bijîşkiya gelêrî û baweriyan de dê bê nirxandin. Divê neyê jibîrkirin ku ev pêvajo, piranî ji kevneşopiyan û baweriyên pûç pêk tê. Dibe ku her pêkanînek, di nav xwe de û li gorî şert û mercên ku derketiye holê mantiqeqî wê hebe. Lê îro gelek ji van sedeman ji rabûbin lê wekî sembol hebûna xwe bidomînin.

---

*maları Dergisi*, 2004;1, r. 49.

358 Sedat Veyis Örnek, *Türk Halk Bilimi*, Türkiye İş Bankası Kültür Yay., Ankara 1977, r. 185.

## Bijîşkiya Gelêrî di Vebûna Qeder û Qismetê Keçikan û Lawikan de

Di bijîşkiya gelêrî de ji bo ku ew pêvajoya zewac û dawetê bi aramî ango bê pirsgirêk here serî gelek pêkanîn hene. Piraniya van pêkanînan li ser baweriyan û kevneşopiyan e. Di çanda Kurdan de, law daxwaza zewacê bi awayekî eşkere dikarin ji mezinên xwe re bibêjin lêbelê daxwaza zewacê ya bi awayekî eşkere ya ji aliyê keçikan ve ne gengaz e. Ev yek, wekî şerm û rûreşiyeke mezin tê pejirandin. Her weha nezewicîna keç û lawan ango maldamayîn jî wek kêmanî, qisûr û tawaneke mezin tê pejirandin.[359] Ji ber vê jî keç û law ji bo ku qismetê wan vebe serî li hin pêkanînan didin. Wek mînak, ji bo ku qismetê keçikan vebe, di dema şêraniya keçikên nas, der û cînaran de şêraniya pêşî -bi dizî- bi wan keçikan didin xwarin. Tenê kesê ku şêraniyê bi dizîka tîne û keçika ku dixwe bi vê yekê dizane. Wisa bawer dikin ku piştî vê şêraniyê dê qismetê wê keçikê jî vebe û hinek dê bên û wê keçikê bixwazin.[360]

Hin keçik wisa bawer dikin ku qismetê wan ji aliyê hin kesên xêrnexwaz ve bi zanetî, bi mebesta ku xisarê bidin keçikê û malbata wê, bi rêya sêhr, nistî û nivîştan hatiye girêdan. Di rewşên weha de ji bo ku bandora wê nistiyê yan nivîştê bişkînin; sêhrê ji holê rakin, li dijî wê pêkanînê ew jî serî li kesên ku nivîştan çêdikin didin. Ew jî nistî û nivîşteke din didin çêkirin.[361]

Hin keçik hene ku ji bo pêşîvekirina li qedera xwe, li ziyaret û êrikan digerin. Ji ber ku hestên xwe nikarin bi awayekî zelal û vekirî ji kesên ku hez dikin re vekin, serî li rêbazên bi vî rengî didin. Heger ev hezkirin yek alî be, rewş hîn xerabtir dibe. Wê gavê diçin ber ziyaretan û dia dikin ku mirazê wan bi cih bibe. Diçin ber darên mirazan, paçik, benik yan jî tiştekî din bi şax û guliyên darê ve girêdidin da ku xwestek û hêviyên wan bi cih

359 Neşe Özcan, *Midyat'ta Evlenme Geleneği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Sakarya Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Folklor ve Müzikoloji Anabilim Dalı, sakarya 2016, r. 54-55.

360 Jêder: 18, 17, 48, 142.

361 Jêder: 1, 2, 16, 75, 83.

bên; bigihêjin hezkiriyên xwe. Kêm caran lawik jî van pêkanînên ku li jor hatine rêzkirin bi cih tînin. Lewra li gorî kevneşopiyan, di zewacê de bêtir lawik hewldana pêşî dikin. Keçik tenê li benda qismetê xwe disekinin.[362]

Di pêvajoya zewacê de berê hevdîtin pêk tê. Ew hevdîtin bi du rengan dibe:

Berê, dê û bavê lawik diçûn -bi awayekî, bi hincetekê- keçik didîtin. Heger biecibandina, vedigeriyan û ji lawê xwe re digotin, *"Me keçika filankesî/ê dît, pir eciband; em ê herin, ji te re bixwazin. Tu dibêjî çi?"* Car caran jî diya lawik mijar ji diya keçikê re vedikir; diya keçikê jî berê keça xwe, paşê jî mêrê xwe agahdar dikir. Piştî malbatê, heger hebin, apên keçikê jî dihatin agahdarkirin. Lewra, li gorî bawerî û kevneşopiya Kurdan *"Keçik para pismaman in."* Piştî ku aliyê keçikê biryareke hevpar da, ew biryar wekî peyameke ji malbata lawik re tê şandin. Ew jî li gorî erênî an jî neyînîbûna biryarê diçûn keçik dixwastin an jî nedixwastin.[363]

Di rêbaza din -a ku îro jî di rewacê de ye- de keçik û lawik bi awayekî (bi alîkariya hin kesan, li dawetan, li dibistanan, li ber ziyaretan, li ser kaniyan, li nav erdan û hwd.) hevdu dibînin. Bi hev re dipeyivin, biryara zewacê didin. Piştre, lawik vê daxwaza xwe an eşkere an jî bi rêbazên cihê (xwe dixeydînin, şîvê naxwin, kevçî di sawarê de diçikînin û hwd.) ji malbata xwe re vedibêje. Heger ew jî qayîl bibin, diçin keçikê dixwazin û pêvajoya dawetê dest pê dike.[364]

Li Sêwazê, kevneşopî û baweriyeke din heye. Dema ku selaya roja înê tê xwendin, mifteyekê dixin bin lingê keçika ku vebûna qismetê wê tê xwestin û dibêjin *"Bila bextê te vebe"*. Li gelek deveran jî keçikên ku dixwazin bextê wan vebe, navê xwe li ser laçik an jî li biniya sola bûkê dinivisînin. Wate ew e ku *"Tu diçî, me jî bi xwe re bibe, rêya me veke."*[365]

---

362 Jêder: 25, 26, 40, 58, 134, 149.

363 Jêder: 95, 96, 107, 108, 112, 124.

364 Jêder: 14, 15, 26, 53, 74, 88, 90, 119.

365 Ahmet Hikmet Eroğlu, "Geçiş Dönemleri ile İlgili İnanışlar", *Halk İnanışları El Kitabı*, (r. 258-282) Grafiker Yayınları, Ankara 2017.

## Bawerî û bijîşkiya gelêrî di zewacên bêdil de

Li civakên Rojhilata Navîn, jin di pêvajoyên biryardayînê de ne xwedîgotin in. Jin, bi cihêkariyên zêde re rû bi rû dimînin û gelek caran bêyî daxwaza wan têne zewicandin. Gava mirov li dîrokê dinihêre, dibîne ku zewacên bêdil ji ber gelek sedeman pêk hatine.[366] Hin ji wan ji bo ku erd û zeviyên malbatê ji dest neçin; hin ji ber zextên li ser jinê, hin ji ber sedemên olî, hin jî ji ber sedemên aborî, siyasî û civakî pêk tên. Di dema biryargirtina zewacê de, tê dîtin ku daxwaz û rizaya jinê esas nayê girtin û jin neçar dimîne ku li ber biryarên eşîr, meriv, bav an jî birayên xwe yên mezin serî bitewîne.[367]

Bayezîdî, hîn di berhema xwe ya ku di salên 1850an de nivîsandiye de destnîşan dike ku ji bo zewicandinê zarokên keç ên Kurd ne xwedîgotin in. Li gorî gotina bav û birayên xwe tev digerin û dibêje, *"Ev rewş ne ji ber mecbûriyetek yasayî an jî dînî ye; dibe ku ji ber şermînî û rêzdariyê be."*[368] Sedem çi dibe bila bibe, zewacên bêyî daxwaz û destûra keçikê cihê rexneyê ne. Dibe ku sedemên zewacên bêdil cihê bin: Heznekirina ji hevdu, temenê aliyan (piçûk-mezin), çikûsî, hesûdî, berdêl, berdêla xwînê, nexweşîn hwd. Di rewşên weha de rêbazên bijîşkiya gelêrî dikevin meriyetê. Jin û keç, ji bo ku pêşî li ber van zewacên bêdil bigrin serî li hin pêkanînan didin.

Ji van pêkanînan a sereke, nistî ye. Keça ku naxwaze bê dilê xwe bizewice ji bo nistî, nivişt an jî sêhrê bide çêkirin diçe cem mela, xoce, remildar û hwd. Hinek pere dide van kesan û ji wan dixwaze ku bi nivişteke pêşî li ber zewaca bêdil bigrin. Nivişta ku tê çêkirin dibin mala zavayê musteqbel û bi dizîka vedişêrin.[369]

Yekcaran, av an jî xwarina ku li ser hatiye *"xwendin"* didin zavayê musteqbel. Tê bawerkirin ku zavayê musteqbel bi vî

---

366 Berivan Kavas, "Kadınlara Yönelik Evlilik Baskısı", *Uluslararası Sosyal Araştırmalar Dergisi*, 2018; 11 (56), r. 389.

367 Bilge Abukan, Filiz Yıldırım, Toplumsal Cinsiyet Temelli Şiddetin Bir Biçimi Olarak Erken Evlilikleri Önlemek İçin Kadınların Güçlendirilmesi, *Uluslararası Sosyal Araştırmalar Dergisi*, 2017;10(53), r. 428.

368 Bayezîdî, *Adat û Rusûmatnameê Ekradiye*, r. 55.

369 Jêder: 3, 15, 22, 60, 105, 113.

awayî dê dev ji zewicandinê berde.[370]

Gava ev pêkanîn bi ser nekevin, rojek berî dawetê sêhr an jî nistiyeke nû tê çêkirin. Tê bawerkirin ku bi vê nistiyê dê mêrîtiya zava betal bibe. Wisa tê bawerkirin ku dê lawik ji keçikê sar bibe û dev ji wê berde.[371]

Heger pêkanînên bi vî rengî jî kêr neyên keçik bi awayekî eşkere bêdiliya xwe ya di ji bo zewacê vedibêjin. Ku ew jî nebe çareserî, bi xwarin û vexwarina hin tiştên xetere hewl didin ku xwe jehrî bikin û dawî li jiyana xwe bînin. Di rewşên weha de, heger malbat bi vê rewşê bihese, ji bo ku keçik bi jehrîbûnê nemire hewl didin ku keçik verişe. Ji bo vê yekê jî mast didin keçikê. Tiştên şor ku dilê wê li hev bikeve û verişe bi wê didin xwarin û vexwarin.[372]

Gelek caran jî keçik heta roja hine û dawetê bêdeng dimînin, bi gotina gel *"Bi qedera xwe razî dibin."* Heta mirinê bi vê zewaca bêdil dijîn. Carinan hin pêkanînên derveyî rê, regez û kevneşopiya civakê jî derdikevin pêşiya me. Keçik ne bi namzetê zavatiyê lê bi xortê ku dil dayê re li hev dike; berî dawetê bi wî re direve. Wê gavê pêvajoyeke gelekî dirêj û xeternak dest pê dike. Bûyerên bi vî rengî gelek caran bi kuştina keçikan û lawikan, bi şerê nav malbat û eşîran encam dibin. Ev şer û dijminatî bi deh salan diajon. Kêm caran jî, hin kesên ku di nav gel de bi paye û xwedîgotin in dikevin navbera her du aliyan û bêyî ku xwîn birije li hev tînin. Di rewşên weha de aliyê bûkê hin şertên wekî qelen, cirm, mişextî û hwd. datîne ber li aliyê zava.[373]

## Xwestin, bir, xelat, hine û dawet

Heger zewac bi dilê her du seriyan (malbata lawik û malbata keçikê) be, her tişt hêsantir dibe. Her du alî rojekê diyar dikin û bi beşdariya malbat û mezinên malbatan keçik tê xwestin û qelenê bûkê tê birîn. Piştî çend rojan çend zilam li ser navê

370 Jêder: 41, 43, 54, 63, 70, 111.

371 Jêder: 45, 71, 78, 94, 147.

372 Jêder: 2, 15, 24, 50, 56, 60, 73, 80, 103.

373 Jêder: 10, 17, 78, 81, 87, 90, 105, 123.

malbata lawik û çend peyayên civatê wekî navçî (navbeynkar) diçin mala keçikê. Di vê civînê de bûk û zava cih nagrin. Bir tê birîn. Bir, navê civîn, rê û resma diyarkirina şert û pêdiviyên dawetê ye. Berî ku rê û resma birê were lidarxistin, malbata keçikê -wekî amadekariyekê-daxwazên xwe yên wekî qelenê keçikê, heqê şîr, xelata xalê, xelata apê, paşderî, cihêz, zêr û hwd. diyar dikin. Di civîna birê de her du alî, li ser mîqdara qelen û daxwazên din bi hevdu re bazarê dikin. Bi alîkarî şahidiya kesên navçî (navbeynkar) her du alî li hev tên. Biryarên ku hatine dayîn wekî du nûsxe têne nivîsandin. Her yek kaxiza ku bi destxeta xwe nivîsandiye şanenav yan tiliya xwe lê dide aliyê hember. Bi vî awayî *bir* tê birîn. Hevdu pîroz dikin û xwarina xwe dixwin. Malbata keçikê xwarinekê çêdike û wekî loqme belav dike. Wisa bawer dikin ku ew loqme, dikeve ber qeda û belayan. Bir, wekî rê û resma sozdayînê tê hesibandin. Piştî vê rê û resmê, bûyera keçikxwestinê ji her kesî tê eşkerekirin. Êdî ew keçik *"bi xwedî"* dibe.[374] Êdî, lawik dikare here mala keçikê û bi wê re bipeyive.

Piştre bi dorê şêranî (nîşan) û hine çêdibe. Dema navbera bir, şêranî, hine û dawetê bi biryara hevpar (lê piranî ji aliyê keçikê ve) tê diyarkirin. Şêranî, hine û dawet wekî şahî têne lidarxistin. Berî şêranî bê danîn her du alî meriv, heval, hogir û dostên xwe derbarê roja şêraniyê de agahdar dikin û vedixwînin. Rê û resma şêraniyê wekî nîvdawetekê tê lidarxistin. Berî roja şêraniyê aliyê zava pezekî dişîne mala bûkê da ku roja şêraniyê wekî firavîn ji mêvanan re were serjêkirin. Bûk û zava tevî malbatên xwe diçin sûkê û cil û berg û zêrên bûkê dikirin. Kirîna van tiştan li ser pişta mala zavê ye. Aliyê bûkê jî ji zava re qatek cil, sol û saetekê dikirin. Roja şêraniyê şahî li ber mala keçikê tê lidarxistin. Def û zirne lêdikeve û govend tê gerandin. Piştre, firavîn tê danîn. Piştî xwarina firavînê zava û bûk tên holê û zêrên nîşanê li ber çavê hemû vexwîneran dixin dest û stûyê bûkê û şêranî li mêvanan tê belavkirin. Heger bixwazin merivên vexwendî jî dikarin diyariyan bi bûk û zava ve deynin.

---

374 Jêder: 1, 11, 17, 27, 31, 44, 72.

Piştî xwarina şêraniyê rê û resm diqede, civat belav dibe. Di demên dawî de gelek kes, li gorî şert û mercên xwe û lihevkirinê bir û şêraniyê bi hev re çêdikin. Xwarinê nadin, tenê şêraniyê û şerbeta şêraniyê belav dikin. Wisa tê bawerkirin ku ev loqme, dikeve ber qeda û belayan. Namzetên bûk û zavatiyê ji bobelatan û çavan diparêze.[375]

Çend roj berî hineyê û dawetê rehêla keçikê tê kirin. Ji her du malbatan -bûk û zava jî di nav de- çend kes diçin sûkê. Ji ta bigre heta bi derziyê hemû pêdiviyên malê, cil û berg û diyarî têne kirîn. Sozên ku di birê de hatine dayîn tên bicihanîn. Bavê zava ji her kesê ku li wir amade ye re jî diyariyan dikire. Tenê libasên zava, sol û gustîlka zava ji aliyê bavê keçikê ve têne kirîn; wekî din her tişt ji kîsê bavê zava ye.

Li navenda bajarê Semsûrê, berî hine û dawetê, bûkê dibin hemamê. Li wir him serê bûkê tê şûştin, him jî şahiyeke piçûk tê lidarxistin. Hemam paqijî ye. Dixwazin bûk pîr û pak were nav malê da ku bextê wê jî pak be.[376]

Çend roj beriya dawetê malbata zava, bang li jinên meriv, dost û cîranên xwe dike. Bi beşdarbûna wan jinan nivîna bûk û zava û nivînên ji bo mêvanên wan (bi kêmanî du dest/qat) têne amadekirin. Di dema girêdana nivînên bûk û zava de, seriyek şêkir dixin nav rûberê lihêva wan. Bawerî ew e ku dê bi vî awayî bûk û zava li hev şêrîn bibin. Di navbera wan de nîqaş dernakeve.[377]

Yek ji rê û resmên girîng yên pêvajoya dawetê, hine ye. Wekî tê zanîn, hine bi gelek mebestan hatiye bikaranîn: Hîn di serdema paleolîtîk de jinan, ji ber ku remza bereketê ye dest, rû û laşê xwe bi hineyê sor kirine; mêran jî di nêçîrê de -ji bo ku neyên naskirin- xwe bi hineyê boyax kirine.[378] Berê, hefteyek pêşiya dawetê şahiya hineyê dihate lidarxistin.[379] Aliyê zava

375 Jêder: 3, 4, 15, 31, 37, 71, 93, 120, 127, 135.

376 Jêder: 25, 84, 85.

377 Jêder: 129, 130, 141, 142.

378 Neyir Kolankaya-Bostancı, "Anadolu'da Erken Prehistorik Dönem Kırmızı Aşı Boyası Kullanımı", *Anadolu / Anatolia*, 2012; 38: r. 35.

379 Li gorî şert û mercên wekî demsal, dûrbun û nêzîkbûn, derfetên malbatan

bi deh-panzdeh mêran û ewqas jî jinan diçû mala bûkê. Bi def û zirneyan şahiya hineyê dihat lidarxistin. Ji mêvanan re şîva êvarê dihate raxistin. Ji bo ku bûk û zava ji hevdu hez bikin destên her du aliyan jî hine dikirin. Xesûya bûkê, zêrekî (wek diyarî) dixe kefa destê bûkê û hineyê li ser pahn dike; destê bûkê lê dide hev û bi paçikekî sor girêdide. Yê zava jî, tiliya qilîçê û ya gustîlkê jî di nav de, heta nîvê kefa destê wî tê hinekirin. Hine tê wateya gihîştina mirazan. Niha piranî şeva berî dawetê şahiya hineyê çêdibe.[380]

Berî dawetê, lawik ji xwe re ji nav heval û dostên xwe şoşpanekî/misawekî[381] diyar dike. Piştî vê biryarê lawik û şoşpan bi hev re dibin destebira û qewl didin hev ku dê heta mirinê ji hevdu re wekî endamên malbatekê tev bigerin û di her mijarê de ji hevdu re bibin alîkar. Jina şoşpan jî heman qewlî dide destgirtiya lawik. Divê ev şoşpan zewicandî be û derbarê her pêvajoya dawetê de xwedî tecrûbe be da ku karibe ji zave re şêwirmendiyê bike. Jina şoşpên jî di vê pêvajoyê de berpirsyariya keçikê hildide ser milê xwe; şêwirmendî û alîkariya bûkê dike. Taybetiyeke şoşpaniyê jî ew e ku şoşpan û jina xwe ji bûk û zava re di mijarên zayendî yên zewacê de jî rêbertiyê bikin. Jin ji bûkê re; mêr jî ji zava re aqilmendiyê dike. Tiştê ku di şeva zîfafê de dê bê kirin yek bi yek ji wan re vedibêjin. Wê şevê her du şoşpan û jina xwe jî li mala zavê, li odeyeke din, radizên.[382] Heger pirsgirêkek derkeve bûk û zava serî li wan didin. Lewra mijarên têkiliya zayendî bi her kesî re nayên parvekirin. Taybetiyeke girîng ya kevneşopiya şoşpaniyê ew e ku bûk û zava bi rehetî dikarin pirsgirêkên xwe yên zayendî bi wan re parve bikin û bi hev re li çareseriyan bigerin.[383]

Roja dawetê bûk û zava digel şahidan, mehra olî dibirin.

---

û hwd. dema hineyê pêş de an jî paş de diçe. Lêbelê misoger beriya dawetê divê pêk bê.

380 Jêder: 5, 41, 50, 62, 80, 159, 160.

381 Li gorî herêm û devokan diguhere: Wekî birazava, destbira, destbirak, misaw.

382 Jêder: 12, 17, 70, 76, 83.

383 Jêder: 6, 49, 35, 40.

Mehrê, -li gorî mezhebê- dede yan jî mela dibire. Mehra fermî piranî piştî dawetê dihate birîn. Heger derfet tunebe ku bûk zava bi hev re di rê û resma mehrbirînê de amade bin yan dê û bavê bûke nexwazin, bavê bûkê yekî dike wekîlê xwe û keça xwe. Lê zava neçar e ku di mehrbirînê de amade be. Mehr, piranî li ser zêrên bûkê û hwd. tê birîn. Di rê û resma mehrbirînê de şahidên her du aliyan jî amade dibin. Her weha berî ku bûk ji mala bavê xwe derkeve benekî/şidikeke sor li newqa bûkê girêdidin. Ew tê wê wateyê ku, *"Em keçika xwe sax û selamet û bi namûs ji mala xwe derdixin."* Berî ku bûk bikeve mala zava li ber derî şerbikekî tijî şêranî û şekir didin destê bûkê. Bûk wî şerbikî li erdê dixe û dişkîne. Şikandina tiştekî weha ji bo wê ye ku bûk û zava ji çav û bobelatan werin parastin. Ew rê û resm hemû ji bo tenduristiya *"zewaceke bixêr"* in.[384]

Li aliyê din ve, piştî dawetê zava û diya zava (xwesî) destê xwe didin hev û bilind dikin. Bûk di bin re derbas dibe. Bawerî ew e ku bi vê pêkanînê dê bûk di bin emrê wan de be.[385]

Şeva dawetê ji bûk zava re xwarina cemêliyê çêdikin. Wisa bawer dikin ku ew xwarina şêrîn dê taqetê bide bûk û zava. Berê, diya bûkê ji bo ku bûk rojên piştî dawetê bixwe, xurekên wekî mewîj, bastêq, gûz û hwd. dixist sindoqa cihêzê keça xwe. Lewra piştî dawetê heta demeke dirêj bûk xerîbiyê û bûkiyê[386] dike; şerm dike ku ligel endamên malbatê têr nanê xwe bixwe. Dema ku bi şev birçî bû, ji wan xurekan dixwe. Ew, ji aliyekî ve ber dilê bûkê digrin, ji aliyê din ve jî taqetê didin bûk û zava.

Li hin deveran, piştî şeva dawetê ango zîfafê, zava derdikeve

---

384 Jêder: 5, 11, 18, 25, 90, 125, 198.

385 Jêder: 15, 23, 31, 48, 62.

386 **Bûkî:** Li herêma Semsûrê kevneşopiyeke dawetê ye. Li gorî vê kevneşopiyê piştî dawetê divê heta demekê bûk bi xerîban, xwesî û xezûrê xwe re nepeyive; tevî wan nan û şîvê nexwe; li devera ku ew lê bin bi kesekî din re jî nepeyive. Heta xwesî û xezûrê wê bexşîşekê ango diyariyekê bidine bûkê destûra rakirina fediyê bidine bûkê. Piştî vê rê û resmê êdî bûk "azad" e; dikare bi her endamê malbatê re bipeyive û bi wan re li ser sifreyê rûne; dikare ligel mêvanan rûne. Ev pêvajoya bûkiyê li gorî serdem, herêm û têkiliya di navbera bûkê û xwesî û xezûrê wê de ji sê rojan heta bi meheke diajo.

ber derî an jî ji şibakeyê sîleha xwe diteqîne.[387] Wate, "Ez mêr im, dergîstiya min jî keçik bû." Heger sîleh neteqe, du sê rojan li hêviya sîlehê disekinin. Ji vê bendêmayînê re dibêjin, *"Lê hatiye girêdan."* Wê gavê zava û bûkê -pirsgirêk di kê de be- dibin ber ziyaretan; dibin bal ocax, bijîşkên dermanên Kurmancî û melayan. Li gorî pêwîstiyê nistî, nivişt û dermanan çêdikin; didin wan. Li gorî tecrûbeya civakê di wê şevê de gelek pirsgirêk derdikevin holê. Li gorî kevneşopiya berê, piştî dawetê heta sê rojên pêşî serê bûkê nedişûştin. Piştre jina şoşpên dihat serê bûkê dişûşt. Bi vê rê û resmê dihate fêmkirin ku di nava bûk û zava de têkiliyeke zayendî çêbûye.[388] Heger di şeva dawetê de bihata fêmkirin ku bûk ne keçik e, wê şevê yan serê sibehê zû bi awayekî dizî bûk ser mala bavê de dihate vegerandin.[389] Niha gelek ji van kevneşopiyan nemane. Di pirsgrêkên zayendî de, bûk û zava serî li tiba hemdem û bijîşkan didin.

Çavînîbûn û bêyomî jî di nav de, gelek kevneşopî û pêkanîn, ji bo bûk û zava ji tiştên xirab dûr bin û bi kêfxweşî bijîn tên kirin. Helbet hemû kevneşopî û pêkanîn li devera Semsûrê ne wekî hev in. Li gor rewşa civakî, aborî, dem, hawirdor, baweriya olî, perwerdehî û hwd. diguherin. Li hin herêmên ku hîn jî şopên feodaliyê lê hene, di diyardeya zewicandinê de bandora pîvanên edetên kelepûrî didomin û li hin derdoran jî pêkanînên li gor jiyana hemdem hene.[390]

Ji ber girîngiya ku gel dide zewacê, rê û resmên dawetê li ser kesên zewicandî vediguhere bêpestî yan jî mekanîzmaya kontrolkirinê û dike ku kesên zewicî bi hişmendî nêzî saziya zewacê bibin. Gelê Kurd -rewşên awarte ne tê de- jihevqetîna mêr û jinê wekî tiştekî asayî nabîne û naxwaze jin û mêr terka hevdu bikin. Ji ber vê yekê pirsgirêkên di navbera hevjînan de bi hev re tên çareserkirin. Heger pirsgirêk mezin be -wekî nebûna zarokan, nebûna mêrbûnê-keçikbûnê, xapandina ji aliyê

387 Meçoyê Darê, "Edetên Zewac û Dawetê", *Kovara Bîrnebûn*, 1997; 2: r. 86-94.

388 Jêder: 1, 3, 9, 12, 68, 75, 95, 151.

389 Jêder: 10, 24, 53, 76, 78, 89, 93.

390 Okan Aydın, Gülen Baran, "Toplumsal Değişme Sürecinde Evlenme ve Boşanma", *Toplum ve Sosyal Hizmet*, 2010; 21 (2): 118.

namûsê ve, zexta fizîkî ya li ser jinê û hwd.- wê gavê malbata her du aliyan û "peyayên civatan" dest davêjin pirsgirêkê û hewl didin ku çareseriyeke aştiyane bibînin.

## MIRIN

Bi wateya giştî mirin, bidawîbûna misoger ya jiyana mirov, sewal, riwek yan hemû jîndaran e. Ji bo mirovan mirin, terikandina rih ya ji bedenê û vê dinyayê ye.[391] Li gorî mirovên xwedîbawerî, laş dimire lê rih namire; tenê cihê xwe diguherîne. Mirin, ji bo hemû mirovan, diyardeyeke gerdûnî ye; wekî zayînê rewşeke xwezayî ye.[392] Ji bo kesê mirî dawiya jiyanê ye lêbelê ji bo kesên mayî jî serdemeke girîng ya jiyanê ye. Ji ber vê yekê mijara mirinê, di nav olan; hemû beşên huner û wêjeyê de cihekî girîng digre.

Mirin, her wekî zayînê di jiyana mirovan de cihekî girîng digre. Di hemû çandan de, derbarê mirinê de raman, pêkanîn, rê û resm hene. Wek mînak, di nav niştecihên girava Kîrîwana ya Papua Gîne de mirin destpêka du bûyerên serbixwe ye. Mirin bandora xwe li ser kesê mirî dike. Rihê (baloma yan jî balom) wî kesê mirî terka bedena wî dike û ji bo ku wekî sî-hebûnekê jiyana xwe bidomîne koçî dinyayeke din dike; diçe bal *Kosî*. Piştî çend rojan rihê kesê mirî tevî *Kosî* vedigere nav malbat, meriv û dostên kesê mirî. Ji ber vê yekê jî kesê/a mirî tevî zêr û xişrên xwe yên din tê veşartin. Li aliyê din, endamên civakê yên sax li pey kesê/a mirî şînê digrin, digirîn û gelek rê û resman li pey kesê mirî û ji bo rihê wî/ê li dar dixin. Di van ayînan de piranî xwarinên xav têne belavkirin. Hemû hêz û taqeta xwe, hebûna xwe ji bo kesê mirî xerc dikin. Ew rê û resm bi giştî wekî berpirsyariyeke li hemberî kesê mirî têne pejirandin.[393]

Di çanda Mezopotamya, Babîl û Îsraîla Kevin de mirin, wekî

---

391 Nurettin Albayrak, *Halk Edebiyatı Kapsamı-Biçimi ve Tür Özellikleri-Literatürü*, Kapı Yayınları, İstanbul 2012, r. 96.

392 Fatma Öz, *Sağlıkta Temel Kavramlar*, Hacettepe Yayınları, 2. Baskı, Ankara 2010, r. 225.

393 Malinowski, *Büyü, Bilim ve Din*, r. 136.

jiyaneke nû yan jî zayîneke nû nehatiye dîtin. Wekî dawiya jiyanê, çûyîna bêveger yan rewşeke xembar hatiye fêmkirin. Digel vê yekê tê zanîn ku Sûmeriyan jî rê û resmên mirinê li dar xistine; ji bo miriyan hin diyarî pêşkêş kirine. Piranî piştî ku term (laş-meyît) veşartine yan şewitandine ji bo mirî hin cil û berg, xurek û têkberên cihê pêşkêşî gora kesê/a mirî kirine. Piştre, ew pêşkêşî veguheriye rê û resmeke ku heyvê carekê digel xwarin û vexwarinan tê lidarxistin. Ew çanda ji wir derbasî civakên Samî bûye.[394] Her weha di çanda Sûmeriyan de bawerî ew e ku bandora miriyan ya çê-xirab li ser zindiyan heye.[395]

Di baweriya Îslamê de mirin, wekî ku di gelek ayet û hedîsan de jî hatiye diyarkirin, *"Mirin ji Xwedê ye. Ê ku jiyanê dide jî distîne jî Xwedê ye."*

> "Hûn li ku dibin bibin; mirin dê bigihîje we; digel ku hûn li kelehên bilind û sitûr bin jî! Ku qenciyek bigihîje wan dibêjin 'ji Xwedê ye'; ku xerabiyek digihîje wan dibêjin 'ji te ye'. Bêje, 'Hemû ji Xwedê ye'"[396]

Dîsa wekî ku ji ayet û hedîsan tê fêmkirin Xwedê, vê pêkanîna mirinê bi destê ferişteyan (Ezraîl-Melekê Mewtê) dimeşîne. Li gorî baweriya Îslamê, jiyana li vê dinyayê, jiyaneke demî ye. Dê zû yan dereng bi dawî bibe. Jiyana esas û daîmî li wê dinyaya din e. Ew jî "Axret" e. Ew dinya jî ji du beşan pêk tê bihuşt û dojeh. Mirov li vê dinyayê têne ceribandin û tenê amadekariya wê dinyayê dikin. Li gorî kiryarên (emel) xwe ew ê li axretê cihê xwe bi xwe diyar bikin. Digel vê yekê jî Xwedê bexşende ye, biryara dawî ew ê bide. Ji aliyê din ve ew nayê wê wateyê ku bawermendên Îslamê ji bo çareserkirina nexweşînan neketine

394 Tiştê balkêş ew e ku, îro jî gelê Semsûrê di serdana goristanan de wekî kevneşopiyekê, xurekên şêrîn yên wekî şekir, mewîj, gofret, loqum û hwd. bi xwe re dibe. Piştî xwendina diayan li mêvanên ku hatine serdana gorê belav dike; hinekê jî datîne ser gorê.

395 Salime Leyla Gürkan, "Ölüm", *TDV Ansiklopedisi*, C. 34, TDV Yayınları, İstanbul 2007, r. 32-34.

396 https: kuran.diyanet.gov.tr, tefsir, Nis%C3%A2-suresi, 571, 78-79-ayet-tefsiri (02.07.2018)

nava hewldanan. Hekîmên misilman jî, wekî kevneşopiyekê, dema ku di mijara çareserkirina nexweşiyekê de ketine tengasiyê serî li zanayên berî xwe dane. Îbn Bahtişû di vê mijarê de weha dibêje:

> "Dema ku em di têgihîştina meseleyekê de ango di çareserkirina pirsgirêkeke tenduristiyê de ketin tengasiyê û bêçare man, divê em Hîpokrat û Galen bişopînin. Di felsefeyê de Eflatûn û Arîsto bişopînin."[397]

Her weha tê zanîn ku pirtûkên Galenos di serdema pêşiya Îslamê de ji Grekî ji bo Erebî hatine wergerandin.[398] Yek ji wan pirtûkan jî di mijara xweparastina ji nexweşiyan de ye. Zanyar û hekîmên Kurd, Ereb, Tirk û Faris jî ji vê berhemê sûd wergirtine.

Bawerî çi dibe bila bibe, mirin her dem ji bo herkesî tiştekî bi xof û tirs e. Bi gotina gelêrî, *rih şêrîn e*. Mirov, ji bo ku rih û canê wan ji hev neqetin her tim di nav hewldanê de bûne û ew hewldan heta ku mirin hebe dê bidomin.[399]

Li herêma Semsûrê di mijara mirinê de gelek pêkanîn hene. Ew pêkanîn, ji serdema nexweşiyê dest pê dikin û heta piştî mirina mirovan didomin. Digel ku rê û resm piştî ku kesek mir bi salekê kêm dibin jî bi rêya cejn, bibîranîn û serdana goristanan didomin.

## Nîşanên Nexweşê Li Ber Mirinê

Kesên ku di demeke dirêj li ba nexweşên giran û kesên temendirêj mane, kêm zêde dizanin ku kesê nexweş li ber mirinêye yan na. Ew, li gorî dîtin, serpêhatî-tecrûbe û tiştên ku bihîstinê nîşanên mirinê dizanin. Nîşanên mirinê li gorî cureyê nexweşiyê, derba ku hatiye xwarin, temenê kesan û hwd. diguherin. Wek mînak, li herêma Çukurovayê, nasnekirina kesên derdorê ya

---

397 Îbn Bahtişû, *Tıp Sanatı ve Nefsin Halleri*, Abdülkadir Coşkun (Çev.), Litera Yay., İstanbul 2014, r. 15.

398 Ahmet Ağırakça, İslam Tıp Tarihi Başlangıçtan VII./XIII. Yüzyıla Kadar, Akdem Yayınları, İstanbul 2016, r. 64-65.

399 Jêder: 2, 10, 12, 20, 56, 89, 106, 113.

nexweşan, zerbûna rû, xwêdana sar, ziqlênihêrtina li arsaqan, nepixîna laş, ponijîn û kêmbûna taqeta peyivînê wekî nîşanên mirinê têne hesibandin.[400] Nexweşiyên ku demeke dirêj diajon derfeta çavdêriyê didin endamên civakê. Lêbelê nexweşiyên ku ji nişka ve çêdibin yên wekî xiştê (qeyrana dil) û hwd. ku derfeta çavdêriyê nadin mirovan jî hene. Li gorî jêderan, çend nîşanên mirinê yên di nav gel de têne zanîn weha ne:

> "Lêvên merî nexaş reş diwin, bêhna wî/ê diçike, solix lê qut diwe."[401]
> "Mirin li ningan dest pê dike, ber bi sêri va heldikşe. Siftê ningên meriya dicemidin, mîna bûzê diwin."[402]
> "Poz û bêvilên wî ziha diwe, xumamê digre. Ev yek. Lêv reş diwin; can zer diwe û avê çavan tê xar. Mirin li jêr va dest pê dike. Rihî meriyan jêr va dikişe. Avê li devê wî/ê dikin sewê ku bêav nere. Ku mir û şûnda, wan kincan li ser diqetînin. Berê wan kincan dişewitînin. Ku ê heta sibê bimîne kêr, meqes yan jî dasê didin ser zikê wî. Sewê ku neperçive. Heta siwê ŕanakevin."[403]

- Nexweşê ber sikratê devê wî ziwa dibe.
- Reng lê zer dibe; li gorî nexweşîna wî/ê laş reş dibe.
- Germa laş nexweş kêm dibe û ji aliyê jêr ve laşê nexweş dicemide.
- Nexweşê li ber sikratê, ji pesna dipeyive ango di ber xwe de bang li merivên xwe yên ku berî wî/ê mirinê dike. Wekî ku ew sax bin û li bal wî bin bi wan re dipeyive.
- Serçavên nexweş dirêj dibin. Çena wî/ê kort dibe.
- Aveke sar ji çavên nexweş tê xwarê. Ava çavan dirije.

Berî ku rih ji can bikişe divê hinek av didin nexweşan da ku bêav nemîne.

---

400 Mehmet Yardımcı, "Çukurova'da Ölümle İlgili İnanışlar-Uygulamalar ve İskenderun Mezar Taşlarının Dili" *II. Uluslararası Karacaoğlan-Çukurova Halk Kültürü Sempozyumu*, Adana, Çukurova Üniversitesi Basımevi, 1993, r. 548.
401 Jêder: 118.
402 Jêder: 148.
403 Jêder: 1.

"Siftê bang li miriyan dikin. Kesên merlixiya xa; ên kezewê. Dû va jî ser çavên xa dirêj diwine, dûva ningên xa dicemidin, diwin bûz û diwerimin. Dûva mêjî xa dimire û rih tê a li ser vê derê diskine (*Ser dilê xwe nîşan dide*). Nexaş kî ku tu herî ser, li halî wî binirî, merî zanî ku ê bimre. Ser çavê xa, canî xa gi hung bi ser hev da spî diwe. Carê ra devî xa kort diwe, çengê xa dirêj diwe. Hung çokmîş diwe. Ku gumik av here bi ser gewriyê da dikin. Ki nere jî pêç şil dikin didin ser dêv. Sewê ku bê av nemîne hung dikin."[404]

"Canî î mirî hing hişk diwe û reş diwe. Ki çing dimre reş diwe. Du wê va ku dişon, ew reşiyê xa lê tehere. Ku ê ku mirî qrîz we, ê qêlb we, cîliyê da reş diwe, canî xa diwerime. Ê qeziya, heta ku şûştine canî xa diwerime. Ê qeziya hetanî çêl jî bîhn li tirbê wana tê. Erê me ewna gi dî ne."[405]

Di hin nexweşiyan de, laşê kesê/a li ber sikratê reş û hişk dibe. Carinan ew reş bûn, piştî ku rih ji beden kişiya û pê ve di demeke kin de jî pêk tê. Piştre dema ku mirî dişon ew reşî hêdî hêdî jê diçe. Heger kesê nexweş ji ber qeyrana dil jiyana xwe ji dest dabe di demeke kin de mirî diwerime û reş dibe. Kesên ku ji ber qezayekê miribin laşê wan di dema şûştinê de sist dibe. Piştî ku hatin veşartin jî heta demeke dirêj bêhneke gelekî giran ji gora wan tê.

## Pêkanînên Berî Mirinê

Endamên malbata kesê nesax heta kêliya dawî hewl didin ku nexweşê xwe ji mirinê rizgar bikin. Ji ber vê yekê jî serî li hemû rêbazên bijîşkiya gelêrî didin. Dema ku rewşa tenduristiya kesê/a nexweş gelekî xerab dibe, hewl didin ku wî/ê bigihînin nexweşxaneyên li bajaran. Lêbelê car caran bijîşk jî nikarin çareseriyekê ji nexweşiyê re bibînin. Di demên weha de "ci-hawa"[406] wî didin malbatê. Malbat jî hêviya xwe ji bijîşkan dibire

404 Jêder: 12.

405 Jêder: 46.

406 Bersiv. Ji peyva "cewab" ya Erebî derbasî devoka Semsûrê bûye. Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de wateye neyînî dihebîne. Ango ji bo xelaskirina kesê/a nexweş êdî tiştekî bê kirin nemaye. Di rewşên weha de bijîşk û hekîmên

û vedigere malê. Bi serê xwe û bi pêşniyarên der û cîranan li çareseriyan digere. Heger dermanên bijîşkiya gelerî jî kêr neyên û nexweş êşê bikşîne vê carê ji bo ku nexweş li ber sikratê pir nemîne ango rihê xwe zûtirîn ji dest bide serî li hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî didin. Di nav wan de pêkanîna ku herî zêde serî lê tê dayîn rêbaza "*sawûna* xaşil" e. Sabûna xaşil û şiveke ter a ji dara tûya li pahniya nexweşê li ber sikratê didin.[407] Wisa bawer dikin ku dê nexweş bi vê pêkanînê bêyî ku êşê bikşîne dê rihê xwe bide destê rihistîn ango melkemotê (melekê mewtê). Jêderek zanînên xwe yên di vê mijarê de weha vediguhêze:

> "Heger ê mirinê we, tu çara xa tinê. Ku meriyên wî ên dûr hewin, sewê ku çavrê û histixar nemire sê caran destê xa li ser çavên wî didin û diwên:
> 'Va destê filanê te ye, va destê malê te ye, va destê erdî te ye.' Paşê sawûnê hêşin ê xaşil ku kok neşixulandine jî di binî ninga bidin a ê ri bide. Sawûnê jî sewê ku zû ri bide tê didin. Kesikî ku wî cizayî wî diwûne ê sawûnê tê bide û bê: 'Here, Xwedê tevli îşî te be.'"[408]

Li gorî baweriyê, carinan rih li mirovan dibe du perçe. Mirov ne mirî ye, ne jî sax e. Di demên weha de ji bo ku nesax êşê nekişîne û rihê xwe zû ji dest bide sabûna xaşil di bin lingê nesax didin. Li gorî baweriyê, sabûn rih dişemitîne û rih diçe dinyaya din. Laş jî ji êşê xelas dibe. Li hin deveran jî xweliyê (ariya êzingan) bi ser serê nesaxê li ber sikratê de li ba dikin. Wate ew e ku, *"Dinya wekî vê xweliyê (arî) pûç û vala ye, bila çavên te li pişt te nemînin. Tu bi rehetî dikarî koçî dinyaya rastî bikî."*[409] Li hin deverên Semsûrê, dema ku nexweş êşeke zêde dikşîne, hêviya jiyanê jê tê birîn lê rih jê nakişe wî/ê dibin nav goristanê. Ev yek bi dizî û ji aliyê nasên nexweş yên wêrek ve tê kirin. Lewra xwestina mirina kesekî ji aliyê civakê ve wekî şermeke mezin tê

---

Kurmancî berê nexweş didin malê û hêwî dikin ku nexweş kêliyên xwe yên dawî li mala xwe, di nav malbat, heval û hogirên xwe de derbas bike.

407 Jêder: 1, 9, 12, 60, 98, 114, 117, 132.

408 Jêder: 132.

409 Jêder: 2, 9, 95, 116, 130, 141.

pejirandin. Hin kes jî bang li mela, şêx û ocaxan dikin û ji wan hêvî û rica dikin û nexweşê wan ji vî ezabî bê xelaskirin. Ew jî nivîştan dikin û diayan dikin ku nexweş di zûtirîn demekê de rihê xwe radestî melkemotê bike.

> "Carna jî diwên rih li meriya diwe du cih; nîvmirî ye. Me ew lawkê xa yê ku paşê mir, bir ba Hecî Ayzer Baba, Tewixanê. Kurik birin ser mêzel, sawûn di bin linga dan û birin mala Hecî Ayzer Baba, xet jî lê kirin. Birin nav mêzel. Ku li wir vegeriyan, saatekê şûnda lawik mir. Ava çavan rijiyabû. Çavên wî şev û ro vekirî bûn. Heta ku mir."[410]

Li gorî baweriyê, kesê ku li vê dinyayê dereng bimire, dibêjin li vê dinê cizayê xwe dikşîne. Nexweşên wisa dibin taxa Tewixanê, ser tirba Hecî Ayzer Baba an jî nav goristanê (mezel).[411] Wisa tê bawerkirin ku miriyên goristanê dê gazî nexweş bikin û nexweş bibin bal xwe.

Li hin gundan, dema ku dema sikratê ya nexweşan dirêj diajo kesekî wêrek hinek xweliya êzingan bi ser nexweş de diweşîne.[412] Wate ew e ku *"Êdî tu rûmet û nirxa vê dinyayê nemaye, tu dikarî bi dilekî pak û rehet dev ji vê dinyayê berdî."*[413]

Di nav civaka Sunnî de, li ber guhê nexweşê li ber sikratê Quran tê xwendin. Ji nexweş jî tê xwestin ku -bi qasî taqeta xwe- beşdarî xwendina dia û lavayan bibe. Wisa tê bawerkirin ku bi vê pêkanînê dê nexweş bi îmana xwe here ser heqiyê.[414] Tiştê balkêş ev e ku pêkanîneke nêzî vêya di ola Zerdeştiyê ku yek ji olên bavkalên Kurdan û Îraniyan e de jî heye. Xwendina helbestên Aşem Vohu û Ahuna Varya a li ber guhê nexweşê li ber sikratê barê stûyê xizmên nexweş e. Nexweş jî -heger hiş li serî be- ne çar e ku beşdarî vê xwendinê bibe.[415]

---

410 Jêder: 9.

411 Jêder: 2, 9, 95, 116, 130, 141.

412 Jêder: 1, 6, 15, 22, 56, 90, 98, 130, 134, 156, 160.

413 Di nav Kurdan de biwêjeke wekî "Xwelî li serê te be" heye. Bi gumaneke mezin ev biwêj ji vê pêkanînê derketiye.

414 Jêder: 85, 99, 114, 146, 152.

415 Irach J. I. Taraporewala, *Zerdüşt Dini*, Nice Damar (Çev.), 3. Baskı İstanbul

## *Pêkanînên dema mirinê heta veşartinê*

Nexweşê/a ber sikratê bi tenê nayê hiştin. Endamên malbatê yên navsere ku ji dîtina miriyan natirsin û kesên din yên ku dixwazin malbatê di vê roja bi êş de tenê nehêlin li ber serê kesê/a li ber sikratê rûdinin. Hin ji wan carê hinek av bi ser devê nexweş de dikin. Heger nexweş nikaribe avê daqurtîne paçikekî paqij şil dikin û di lêvên wî/ê didin. Piştî ku nexweş rihê xwe radestî rihistîn kir, heger çavên mirî vekirî mabin kesekî/e wêrek destê xwe dide ser çavên wî/ê û çavên wî/ê digre. Şidikekê dide bin çena mirî û dibe li ser serê wî/ê girê dide. Mebest ew e ku devê mirî vekirî nemîne. Berî ku laşê kesê/a mirî hişk bibe cil û bergên li ser mirî bi meqesekê yan kêrekê têne qelaştin û derxistin. Wan cilan dibin devereke dûr û bi dizî dişewitînin. Lewra ew cil bi xof in. Piştre kesê/a mirî di nav rûberekî yan betaniyekê de tê parastin.[416]

Li gorî baweriya civakê divê kesê/a mirî di tariyê de neyê veşartin. Ji ber vê yekê heger mirin bi şev pêkhatibe, heta sibehê kesên navsere li mirî dipên. Heger kesê mirî mêr be, mêrên navsere heta sibehê ranazên. Heger jin be, jinên navsere heta sibehê ranazên. Jin piranî digirîn û mêr jî bêdeng disekinin. Heger axaftin bibe jî mijar qenciya kesê/a mirî yan jî serpêhatî ne ku bi "rehmetî" re hatine jiyîn. Gelek caran jî bang li melayekî dikin. Mela li ser mirî ayetên Quranê dixwîne.[417]

Piştî ku kesek dimire alaveke hesinî û tûj didin ser beden-laşê yî/ê mirî. Li gorî kesên ku me bi wan re hevpeyvîn kiriye, kêrekê, dasekê yan meqesekê datînin ser zikê kesê/a mirî. Ev yek ji bo wê ye ku laşê kesê/a mirî nenepixe.[418] Heger kesa mirî jin be li hin

2011, r. 82.

416 Jêder: 1, 9, 15, 22, 33, 57, 60, 79, 96, 112, 125, 148, 156.

417 Jêder: 10, 15, 54, 75.

418 Jêder: 6, 7, 13, 21, 33, 87, 90, 100, 101, 134,159.

Lêbelê dibe ku koka vê pêkanînê baweriyeke gelekî kevin be. Lewre dîsa li gorî baweriyê, heta ku rihê kesê/a mirî li derdora laşê wî/ê be, ji bo ku ew rih neyê birînkirin divê kêr û tiştên din ên birek neyên bikaranîn. Pêkanîneke bi vî rengî di nav gelê Romen de jî heye: Li Transîlvanya (Devereke Romanya ye) piştî mirinê, heta ku cendekê mirî li mal be, berê kêrê yê tûj li hewayê nahêlin. Yan na dibe ku rih neçar bimîne ku li ser wî tiştê birekî-tûj siwar

deveran dest, ling û seriyê mirî hine dikin. Porê wê tevî guliyan didin ser sînga mirî, bawerî ew e ku ew gulî li wê dinyayê sing û berê jinan vedişêrin:

> "Heger jin be hine li dest û ling û serê wan dikin. Heger porî dirêj be li wê dinê ser pêsîrê wê digre."[419]

Serê sibehê zû ava miriyan di beroş û sîtilên mezin de tê germkirin. Bi qêrîn û hawaran kesê/a mirî tevî betanî û rûberên ku di nav de hatiye parastin, ji hundir tê derxistin. Li hewşa malê (niha li mizgeft û nexweşxaneyan) li gorî zayenda kesê/a mirî jin yan mêr bi tej û merşan li dora teneşoyê xelekekê çêdikin. Mebest ew e ku di dema şûştina mirî de bedena wî/ê ya tazî ji aliyê her kesekî ve neyê dîtin. Mirî datînin ser teneşoyê û dişon. Piranî mela yan jî kesên xizan lê di vî karî de jêhatî miriyan dişon. Di dema şûştinê de, heger mirî jin be dest, ling û serî tê hinekirin. Por dikin kezî û didin ser pêsîran. Heger mêr be, rih û deverên şermê têne kurkirin.[420] Berê ji ber derfetên kêm mirî bi sabûn û hiriyê dişûştin. Miriyan sê caran kefen dikin; yê jinan dudo jê spî û yek jê kesk e. Yê mêran her sê jî spî ne.

> "Miriyan bi herî û sawûnê dişon. Ê jinan sê kefen in. Didu yê spî ne yek î kesk e. Ê mêran her sê jî spî ne."[421]

Li gorî baweriya civaka Îslamê, divê kesê/a mirî bi pakî derkeve pêşiya Xwedê. Ji bo vê yekê jî mirî bi çend avan têne şûştin. Kefenê spî li wan tê pêçan û ji bo ku bêhna xweş ji wan were ava gulan, qolonya, misk û hwd. li ser kefenê wan tê reşandin. Berê li hinek deveran jî hineya ziwa li ser kefen dihate reşandin.[422] Heger mirin li derveyî malê pêk hatibe, berî ku laşê wî/ê binax bikin wek cara dawî dibin malê. Endamên malê heqê xwe li

---

bibe. Ew jî dê rê li ber birîndarbûna rih veke. (Binêrin: James G. Frazer, *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, r. 174.)

419 Jêder: 161.

420 Jêder: 152.

421 Jêder: 153.

422 Jêder: 18, 22, 27, 117, 118.

wî/ê helal dikin.[423] Piştre termê wî/ê didin ser darbestan. Heger a mirî jin be çarikekê, heger keçik be şarpeyekê, bûkaniya wê yan ji cihêzê wê libasekê diavêjin ser darbestê. Mebest ew e ku herkes zanibe bê ka kesê mirî jin e, keçik e yan mêr e. Piştre, li ser milê meriv, nas û dostên wan ên mêr ve bi gotina "*Xwedê rehma xwe lê bike, Xweda rehma xwe lê bike, Xweda rehma xwe lê bike*" heta ser goristanê dibin.

Heger goristan dûr be bi wesayîtekê heta nêzîkî goristanê dibin. Darbestê didin ser milan û li nêzîkî gora kolayî, li cihekî rast darbestê datînin erdê; nimêjê li ser dikin. Bi rêberiya mela yan dedeyan ji aliyê kesên zana ve mirî tê veşartin. Gora wî tê sererastkirin, kêl ango helanên gorê têne bicihkirin. Hinek genim li ser gorê tê reşandin û hinek av jî lê tê reşandin. Heger kesa mirî, jin be çarika wê bi helanê gorê ve tê girêdan. Ev çarik yan kitan heta 40 rojî li ser gorê dimîne.[424] Piştre gel li dora mela yan dede dicive. Mela yan jî dede, li ser mirî telqînê dixwîne û bi fatîhayê diqedîne. Piştre li ser daxwaza çend kesên din xwendina sûreya fatîhayê dubare dibe. Civata mêran belav dibe. Tevir û bêrên ku ji ser goristanê têne vegerandin berê li ziyaretekê datînin, piştre tînin malê. Bawerî ew e ku, bi vê yekê êdî pêşî li mirinên din tê girtin.[425]

Jin, bi darbestê re nameşin. Hinekî li paş dimînin û di dema binaxkirinê de jî li dûrî goristanê radiwestin. Piştî ku mêr ji nav goristanê vegeriyan, ew diçin ser gorê û digrîn. Li ser kesê/a mirî kilamên şînê dibêjin. Piştre ew jî vedigerin malê û şînê datînin. Şîn, piranî li mala kesê/a mirî tê danîn. Heger mal ne guncav be, li ber derî konê şînê tê vedan. Di salên dawî de, li navçe û bajaran û li hin gundan "malên şînê" hatine çêkirin. Şîn li wan malan tê danîn. Şîna li van malan sê rojan dajo. Piştre, xwediyên şînê vedigerin mala xwe û li wir pêşwazîkirina mêvanên sersaxiyê didomînin.[426]

423 Jêder: 3, 9, 12, 76, 155.
424 Jêder: 6, 13, 74.
425 Jêder: 85, 122, 131, 133, 154.
426 Jêder: 22, 35, 50, 77, 78, 82, 101, 123, 150.

### Pêkanînên Piştî Veşartina Kesê/a Mirî

Li gorî baweriya gelek olan, ev alema ku em niha tê de dijîn demî ye, dê rojekê biqede û piştî mirinê alema bêdawî dê dest pê bike. Tenê bawerî dikare hêza têkbirina dijwariyên jiyanê bide mirovan. Lewra, baweriya têkbirinê gelek caran ji guherandina rewşê girîngtir e. Wek mînak, ola Îslamê soz dide peyrewên xwe ku li hemberî êş û zehmetiyên ku li vê dinyayê kişandinê dê li axretê wekî qencî û xêr li wan vegerin. Ew yek jî êşên mirovan kêm dike û taqeta berxwedana li dijî pirsgirêkan dide mirovên di tengasiyê de.

Ji bo ku her kesek li wê dinyaya baqî di bihuştê de bijî divê li vê dinyayê berpirsyariyên xwe bi cih bîne. Ew berpirsyarî jî pergala jiyana mirovan saz dikin. Ji ber vê baweriyê, ne tenê di dema jiyînê de her weha piştî ku kesek mir jî divê hin xêr û qencî ji bo kesê/a mirî bêne kirin. Di vê çarçoveyê de, piştî ku rê û resma veşartinê xelas bû, li mala şînê li aliyekî ve cihê şînê tê amadekirin li aliyê din jî ji bo mêvanan xwarin (li gorî dema veşartina mirî, taştê, firavîn yan şîv) tê amadekirin. Pezek yan dewarek tê serjêkirin. Kesên ku ji bo sersaxiyê têne mala şînê jî destvala nayên. Li gorî rewşa xwe ya aborî rûn, şekir, çay, arvan, dan, sotemenî (êzing, qirş û qal û hwd.), kartol û hwd. bi xwe re tînin.[427] Carinan, rewşa aborî ya xwediyê şînê têra verastina mêvanan û rê û resmên şînê nake. Di rewşên weha de, hin kesên ku rewşa wan ya aborî baş e, berpirsyariya danekî şîvê yan firavînê hildidin ser milê xwe. Gelek caran jî, piştî şînê bi çend rojan merivên kesê/a mirî li hev dicivin. Ji wê civatê sê çar kes wekî komîsyonekê dicivin û pêşengiyê dikin. Beşdarên civatê, li gorî derfetên xwe, hejmarek pere diyar dikin û radestî wan berpirsyaran dikin. Piştî ku her kesî bêşa xwe da, wê alîkariyê didin mezinê mala şînê, da ku deynên xwe bide.[428]

Niha li Semsûrê jî wekî gelek deverên din, di roja siseyan mewlûd tê xwendin; firavîn û helaw tê belavkirin. Piştî xwarinê mêvanên şînê belav dibin; konê şînê radibe. Lêbelê li her deverê

427 Jêder: 4, 11, 13, 24, 40, 52, 71, 89, 100.

428 Jêder: 36, 45, 78, 96, 105, 112, 120, 158, 163.

ne wisa ye. Bi taybetî di nav civaka Elewiyan de roja sisêyan an jî heftan serdana goristanê tê kirin. Ji vê rojê re *"Roja Devvekirinê"* tê gotin. Di roja Devvekirinê de her kesê ku diçe mala şînê bi xwe re teyfikek arvan dibe. Ew arvan hemû dikevin ser hev. Bi wan arvanan û dimsa rezan helawa mirî tê çikirin. Piştî çêkirina helawa miriyan, jin diçin serdana gorê. Di serdanê de êşên malbatê nû dibin; nas û merivên kesê/a mirî li ser gorê dia dikin û digirîn. Piştî demekê, helawa ku hatiye çêkirin li ser gorê, li mêvanan tê belavkirin. Ya mayî jî didin mêvanan da ku bi xwe re bibin mal. Piştre cardin vedigerin mala şînê.[429] Wate, êşa ku tê kişandin hinekî kêm bûye.

Piştî ku şîn belav bû, endamên malbatê -wekî diyariyeke bibîranînê- alavên mirî yên mîna tizbî, qûtiya cixarê, heste; kitan, xişr û hwd. tiştên piçûk ji xwe re li malê dihêlin yên mayî (betanî, sol, cil û berg û hwd.) li kesên hewcedar belav dikin.[430]

Malbata kesê/a mirî, piştî mirinê heta bi çil rojî her şev "*Şîva Miriya*" derdixe. Şîva miriya, piranî li der û cînarên xizan tê belavkirin. Li gorî malhaziriyê şîv çi be, ew tê belavkirin. Şîv bi qasî teyfikekê ye ango têra kesekî ye. Dema teyfikê radestî kesa/ê pêwîst dikin, dibêjin *"Bila xêra miriyên me be."* Ew kesê/a ku teyfika şîvê distîne jî dibêje *"Xwedê xêra we qebûl bike. Bigihê ber destê miriyê we."* Şîva miriyan -wekî ku nav li ser e- piranî danê êvarê tê belavkirin. Lêbelê car caran serê sibehê jî nan, mast, kilor, qatme (patîle) û hwd. jî tê belavkirin. Ji vê kevneşopiyê re jî *"Nanê Serî Siwê"*[431] tê gotin.[432]

Piştî mirinê bi çil rojî, rê û resma *"Dev û Çel"* tê lidarxistin. Wê rojê, merivên kesê/a mirî, li ser agahdarkirina endamên malbata kesê/a mirî, têne cem hev. Serê sibehê, li gorî rewşa aborî ya malbatê pezek yan dewarek tê serjêkirin. Goşt, ji hev tê qetandin û hûrkirin. Goştê nerm dikin qelî û hestî jî ji bo nav tirşikê têne kelandin. Piştî ku mêvan civiyan, ji aliyê dede yan

429 Jêder: 4, 5, 9, 16, 19.

430 Jêder: 2, 14, 19, 37.

431 Siwe: Sibe(h), beyanî. Di devoka Semsûrê de, di gelek bêjeyan de ji dêvila tîpa "b", tîpa "w" tê bikaranîn. Wekî riw (rib), hew (heb), sewir (sebir).

432 Jêder: 1, 5, 14, 23, 38.

melayê vexwendî ve mewlûd tê xwendin. Piştî mewlûdê, ji bo civaka li wir amade firavîn tê danîn. Şîv, piranî sawara bilxûr an jî birinc û tirşik e. Tirşik jî ji fasûleyên hişk û kartolan tê çêkirin. Piştî vê xwarinê civat belav dibe û endamên malbata kesê/a mirî û hin mêvan careke din serdana goristanê dikin. Piştî vegera li ser goristanê şîn diqede. Zilamên malê riha xwe kur dikin; jin kincên reş ji xwe dikin û êdî yên rengîn li xwe dikin. Jiyana asayî dest pê dike. Her kesek diçe ser kar û barê xwe.[433]

Piştî mirinê bi salekê, ji bo xêra miriyan rê û resma *"Xêr"*ê tê çêkirin. Roja rê û resma Xêrê, hefteyekê-deh rojan pêş de tê diyarkirin û meriv, nas û dost têne vexwendin. Roja Xêrê, dewarek (ga, çêlek, nogin û hwd.) tê serjêkirin; ji bo hemû kesên vexwendî firavîna ku ji qelî, pirinc û tirşikê pêk tê, tê amadekirin. Piştî xwarina firavînê endamên malbatê careke din diçin serdana gora kesa/ê mirî. Bi vê rê û resmê berpirsyariyên endamên malbata mirî yên li hember kesê/a mirî xelas dibin. Lewra heta ku "Xêr" neyê kirin ew malbat xwe li hemberî ê/a mirî deyndar dihesibîne û her weha civak jî wê mala ku "Xêr"a miriyên xwe nekiriye şermezar dike.[434]

Bawerî û pêkanînên bi vî rengî li Anadolê jî hene. Mesela, li navçeya Sîlîfkê ya bajarê Mersînê, çawa kes dimire, kincên ser wî/ê tên derxistin û bendika kincê wî/ê tê qetandin. Mirî, li ser piştê tê dirêjkirin, destên wî/ê datînin ser sînga wî/ê, tiliyên berankê yên lingên wî/ê bi hevdu ve tên girêdan. Mirî nayê sekinandin, herî zêde şevekê tê sekinandin. Tê bawerkirin ku heta mirî neyê veşartin dê rihet nebe. Li herêma Çorumê, piştî binaxkirina mirî, li mala şînê xurekên wekî loqum, biskuwît, nan, ava fêkî û dew têne belavkirin. Heta sê rojan der û cîran xwarinê çêdikin û tînin mala şînê. Roja heftan mewlûd tê xwendin. Roja çilî dîsa mewlûd tê xwendin û xwarin tê belavkirin.[435]

Li navenda Semsûrê, ev edet û pêkanînên li jorê behsa wan

433 Jêder: 143, 145, 150, 157, 158, 160, 162.

434 Jêder: 2, 5, 9, 16, 19, 98, 111, 129, 132, 134, 164.

435 *Özkan Demir, Nur Bakar, "Silifke Yörüklerinde Doğum, Evlenme ve Ölüm Gelenekleri Üzerine Bir Araştırma", Türkiyat Araştırmaları Dergisi,* 2014; 35, r. 127.

hat kirin gelek jê guherîne. Piraniya nexweşan, êdî li nexweşxaneyan wefat dikin. Heger kes li malê miribe jî gazî peywirdarên tenduristiyê û bijîşkan dikin û piştî teşxîs û destwerdanên bijîşk û peywirdarên din ên fermî rewş, roj û dema mirinê bi raporan tê teqezkirin. Piştre cendekê mirî, ji bo rê û resmên olî tê rakirin. Li navenda bajêr piraniya rê û resmên şînan sê rojan diajon. Roja sisêyan de ji bo rihê mirî mewlûd tê xwendin û paşê xwarin û helawa hûrik tê belavkirin. Piştre, civak belav dibe û konê şînê radibe. Kesên ku dem û derfeta serdana mala şînê nedîtibin, diçin mala merivên kesê mirî û li wir ji wan re sersaxiyê dixwazin.

# BEŞA SÊYEMÎN
## BIJÎŞKIYA GELÊRÎ Û DERMANÊN KURMANCÎ/ KURDEWARÎ

### DI JIYANA ROJANE DE

Ji xeynî serdemên derbasbûyîna jiyanê yên wekî welidîn, zewicandin û mirinê mirov di jiyana rojane de jî bi gelek nexweşîn û pirsgirêkên tenduristiyê re rû bi rû dimînin. Dibe ku ev pirsgirêk, timtêlî (fîzîkî) an jî rihî-hestiyarî bin; tirs, saw, meraq, evîn an jî pirsgirêkên derûnî-rihî yên demborî û mayinde bin. Pirsgirêkên laşî (nexweşînên navî) yên wekî rahatin (îmunolojî), hilmijînî (hilmgirtin), hêrisandinî hwd. bandoreke nebaş li tenduristiya mirov dikin.

Carinan, ji ber destwerdanên ji der ve, nerihetiyên timtêlî (fîzîkî) çêdibin. Birîndarbûyîna ji ber ketin an jî lêketina li tiştekî, birîndarbûyîna ji ber şewatê, amûreke birekî (tûj-sû); tehlbûn, jicihçûn hwd. çend ji van pirsgirêkan in. Piraniya pêkanînên bijîşkiya gelêrî, têkildarî pirsgirêkên tenduristiyê yên ji ber pirsgirêkên pîşeyî ne. Mesela, kesên çandiniyê dikin; birîndarbûyîna wan a ji ber amûreke çandiniyê tiştekî gengaz e. Lêkolînên ku li ser vê mijarê hatine kirin angaşta li jor disepînin. Li gorî xeba-

teke ku li Zanîngeha Dîcleyê a Diyarbekirê hatiye meşandin, di sala 2005an de li Tirkiyeyê 73 hezar û 923 qezayên karî-pîşeyî qewimîne. Di van qezayan de, 24 jê ji ber nexweşînên pîşeyî, bi giştî 1096 kesan jiyana xwe ji dest dane.[436] Li gorî daneyeke din, di sala 2016an de li seranserê Tirkiyeyê 286 hezar û 068 qezayên pîşeyî qewimîne û li 597 kesan jî nexweşînên pîşeyî peyda bûne. Kesên ku derbajaran dijîn û karkerên çandiniyê yên tu ewlehiyeke wan ya pîşeyî tuneye jî ne di nav van daneyan de ne.[437] Ew jî tê wê wateyê ku her sal bi sed hezaran kes ji ber qezayên pîşeyî birîndar dibin yan nexweş dikevin û ji van kesan bi hezaran kes jiyana xwe ji dest didin.

Di nav gel de, mirin ne tê de, sedem çi dibe bila bibe ji bo her rewş û pirsgirêkê pêkanînên bijîşkiya gelêrî hene. Ji vana hin jê bi dermanên ku bi berên nebatî, ajalî yan jî madenî-kanî tên çêkirin tên çareserkirin. Hin jê jî bi pêkanînên bawerî-olî yên wekî nivişt, nistî, serdana êrik, tirbe û ziyaretan têne çareserkirin. Car heye çend rêbaz bi hev re tên bikaranîn.

Wekî herêmên din, li Semsûrê jî ji ber xwenegihandina saziyên tenduristiyê yan bidestneketina derfetên wekî cih, dem, temen, pîşe, jiyana aborî li mirovan nexweşînên cur bi cur û pirsgirêkên tenduristiyê rû dane û hîn jî didin. Hin nexweşîn bi nojdariyê û tevdîrên ku têne girtin bi demê re ji holê radibin yan nav û kirasê xwe diguherînin. Lêbelê di sohbet û axaftinên kalemêr û pîrejinan de navê van nexweşînan hîn jî tê bilêvkirin: Nexweşînên *kerkem, kinî, rîçik, tatbûn, xefirxane, zimanşikestin* hwd. mînakên wan in. Me xwest ku em agahiyên zêdetir derbarê van nexweşînan de tomar bikin lê mixabin digel hewldanan, me nikaribû derbarê taybetmendî û rêbazên nojdariya van nexweşînan de tu agahî û zanyarî bi dest bixin. Loma di vê xebatê de tenê nexweşînên ku derbarê wan de agahî bi dest ketine cih

436 Nazan Yardım, Zekiye Çipil, Ceyhan Vardar, Salih Mollahaliloğlu, "Türkiye İş Kazaları ve Meslek Hastalıkları: 2000-2005 Yılları Ölüm Hızları", *Dicle Tıp Dergisi*, 2007; C. 34, r. 4, r. 264-271.

437 Türkiye İş Sağlığı ve Güvenliği Kurumu, *2016 İş Kazaları ve Meslek Hastalıkları İstatistikleri*, Ankara 2017. tuisag.com/yillik-is-kazalari-istatistikleri/ [illegible]

digrin. Li jêr behsa nexweşîn û rêbazên dermankirin, nojdarî û başkirina nexweşînên li Semsûrê hatiye kirin.

## Lûr

*Lûr* ango "*şepelûriya/alerjiya xurekî*", wekî berteka laşê mirov ku ji ber şepelûriya xurekan di pergala rahatiniyê/îmunolojiyê de peyda dibe tê pênasekirin.[438] Hin xurek an jî avên nepaqij li mirovan nayên. Laş, van xurekan napejirîne û bertekê nîşan dide. Lewma nav, pişt, dest, mil hwd. ê mirov dixurin; diwerimin û sor dibin. Di nav gel de, ji van peqik/peqokên sor û mezin re *lûr* tê gotin.

Wekî li jorê jî hatiye bilêvkirin, car heye ava nepaqij dibe sedema lûrdayînê. Li deverên ku ava xetên binesaziyê tuneye yan jî heye lê ne paqij e, dema mirov ji wê avê vedixwin yan bi wê avê serê xwe dişon, canê wan lûr dide. Li deverên çolterî -nexasim havînê- ava kanî, çem û bîran kêm dibe. Lewma peydakirina ava paqij dibe pirsgirêkeke mezin. Heger serî bi ava nepaqij bê şûştin jî xetereya ji bo lûrdanê zêde dibe. Heger lûr neyê nojdarîkirin (dermankirin) an jî xwe bi xwe venemire, di laş de dibe sedema birînan.

Gel, di rewşên lûrdayînê de serî li bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî dide. Kesê/a nexweş, heger li derve be li ber gol, kanî an jî çemekî serê xwe dişo. Qederek şûnde xur û werimandin xwe bi xwe vedimire.[439]

Li gundên Kolikê yên nêzîkî Çiyayê Bêlî (Nemrûd), ji bo çareserkirina lûrê nistiyek tê bikaranîn. Ew nistî ji heft heb ceh, tayek porê jinan û bizmarekî nû pêk tê. Kesê/a nexweş radihêje wan amûran û derdikeve hewşê. Li cihekî ku axa nerm lê heye radiweste. Bizmarê xwe di erdê de diçikîne. Bi dorê ceh diavêje ser bizmar, tayê por li bizmar dişidîne. Di vê navberê de dibêje, *"Ceh êmê te; por, hefsarê te; mêx, singê te."* Van gotinan çend caran dubare dike. Jêder Lûtfiye Xanimê di vê mijarê de agahiyên

---

438 Papatya Bayrak, "Besin Alerjileri", *Sağlıkta Birikim Dergisi*, 2006; 1 (1), r. 112.

439 Jêder: 160.

xwe bi me re parve kirin:

> "Ava berê, ê pîs bû. Ku jina bi wê avê serê xa dişûştin, jinûyê wana kul diwûn. Canî xa lûr dida. Heft hew ceh, têlik por, mixikî xaşil tînin, li deriki ku mêx pê de dihere (nerm) dikin erdê. Cê davê ser mêx, mû li mêx dijidînin û diwên, *'Ceh êmê te; por hefsarê te; mêx, singê te.'* Sewê ku ew jinûya rehet biwe."[440]

Li herêmên din jî nistiyên din têne bikaranîn. Li herêma Komîrê dema ku laşê kesekî lûr dide, avê dikelînin, ariya (xwelî) êzingên bejî dixin nav avê û tev didin. Ew heta ku hinekî sar bûye arî jî dadikeve binî û av zelal dibe. Bi wê avê serê xwe dişon.[441] Hin kes jî laşê xwe bi ava sar dişon û parêzê digrin. Parêz, piranî qedekirina xurekên birûn e.[442]

Li Konyayê, ji bo vemirandina lûra li laşê mirovan, diçin gel ocaxan. Di kesê biocax sê caran xwê li cihê lûr lê daye dide, paşê potekî diavêje ser nexweş û hesinê ku di nav agir de hatiye sincirandin di ser nexweş re dibe û tîne. Piştî vê pêkanînê, parêzê/perhîzê pêşniyar dike û nexweş dişîne malê.[443] Di rewşa îro de gel hişyar bûye, heger xureka ku dibe sedema lûrê fêm bike, êdî wê xurekê naxwe. Heger sedema wê ne diyar be û bi xwe û xwe (xweveber) venemire serî saziyên tenduristiyê dide. Lewra êdî tê zanîn ku gelek sedemên lûrê hene. Wekî, av, hewa, riwek, xem (strês), xurek û hwd. Bijîşk, li gorî encamên tehlîlan nojdariyê dikin.

## Pêvedana Moz, Mar û Dûvpişkan

Wekî hemû herêmên cîhanê, li herêma Semsûrê jî mirov bi xwezayê têkilhev dijîn. Gelek caran, mirov û ajalên kovî qadên jiyanê yên hevdu binpê dikin. Nexasim jî, mirov qadên jiyanê yên ajalan dagir dikin. Di rewşên weha de ajal, jiyana xwe di

440 Jêder: 29.

441 Jêder: 9, 27, 30 31, 33.

442 Jêder: 6,15,28,70.

443 Bülent Çevik, *Konya'da Halk Hekimliği Uygulamalarının Dünü ve Bugünü*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Cumhuriyet Üniversitesi SBE, Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Sivas 2008, r. 34.

xetereyê de dibînin û ji bo parastina xwe û qada jiyana xwe, êrîşê dibin ser mirovan. Ji van ajalan moz, kelmêş, mar û dûpişk gava bi mirovan vedidin, jehra wan tevlî xwîna mirovan dibe û dibe sedema jehrîbûnê.

Kesê/a ku ajalan pê vedaye heger neyê nojdarîkirin/dermankirin, dibe ku aliyekî wî/ê pûç/kût bimîne yan jî jiyana xwe ji dest bide. Ji ber vê yekê mirov gava bi êrîşên van heywanan re rû bi rû dimînin serî li rêbazên bijîşkiya gelêrî didin.

### *Pêvedana Mozan*

Li herêma Semsûrê du cureyên mozan hene ku li her deverê hene û wekî hejmar jî gelek in. Jehra wan gelekî xetere ye, dikare mirovan bikuje. Yek ji wan "mênsor" ango "mozesor" *(vespa crabro)* e û yê din jî "pîzag" *(vespula germanica)* e. Wekî ku ji navê wan jî tê fêmkirin mênsor sor in, bi mezinahî ji pîzagan mezintir in. Xisara ku didin mirovan jî ji ya pîzagan pir zêdetir e. Jehra wan dikare mirovan bikuje. Heger nekuje, cihê ku mênsorê û pîzagê pêve daye berê dişewite û piştre jî diwerime. Lêbelê heta çend rojan werimîna laş hêdî hêdî dadikeve û wenda dibe.

> "Mênsor meriya dikujin. Wê salê, qey 25 sal bûne yan newûne, bi gavanî naxirê me girtin. Heta ki xa gihand malê, canê wî gi werimî. Heta zimên di dêv da werimî bû, solix lê qut kir. Hîn negihandibûn bajêr mir."[444]

Li herêmê, di rewşa pêvedan ango pêgirtina pîzagan û mênsoran de kevirekî çeqmaqî ku li ber tavê ji german sor bûye tînin û didin ser cihê ku mozê pêve daye. Vê pêkanînê bi du sê kevirên cihê dubare dikin. Her ku kevirek sar bû kevirekî din didin ser cihê ku mozê pêvedaye.[445] Wisa tê bawerkirin ku germahî jehra mozan dişewitîne.

Hin kes jî cihê ku mozê pêve daye bi heriyê dişon.[446]

---

444 Jêder: 71.
445 Jêder: 25, 33, 47, 144.
446 Ahmet Âkil Yağınlı, *Adıyaman Merkez Ağzı ve Kültürü*, Adıyaman Belediyesi Kültür ve Sosyal İşler Müdürlüğü Yayınları, 4. Baskı, Adıyaman 2013, r. 317.

Hin jî ava balicanên sor di ser devê birînê de diguvêşin.[447]

Heger pêvedana mozan li dûrî wargehan be, hin kes cihê ku mozê pêve daye xwîn dikin û diguvêşin. Mebest ew e ku berî ku jehra mozê bigihêje xwînê wê ji nav laş derînin.[448] Wisa tê bawerkirin ku ev pêkanîn dê êşa ji ber pêvedanê kêm bike û nehêle ku laşê mirov biwerime.

Piştî ku ceyran hatiye gundan û mirovan jî fêm kiriye ku ev pêkanînên ku li jorê hatiye behskirin xelet in, mirov di rewşên weha de qeşayê (cemedê) didin ser cihê ku mozê pêve daye da ku laş newerime. Hinekî rewşê dişopînin. Heger rewşa nexweş girantir bibe, wê/wî dibin nexweşxaneyan.

### *Pêvedana Maran*

Li herêma Semsûrê, çend cureyên maran hene em nizanin. Lêbelê di nav gel de, bi giştî wekî marê gewr, marê reş, marê sor, marê kor (koremar), marê fironek (tîremar), marê serşûnik, marê qijbelek, marê biqoç (qiloç), marê ejdiya (zîha) û marê avê têne dabeşkirin. Li gorî baweriya gelê li herêmê, marê reş bi meriv venade. Bi ser de nobedariya erdan û goristanan dike. Heta ku mirov bi zanetî zirarê nedine wî, ew bi kesî venade. Heger pêvede jî nakuje. Lewra jehra wî ne kujêr e.[449] Marê reş, di bijîşkiya gelêrî de jî wekî derman tê bikaranîn. Li gorî baweriyê, *"marê reş di destê qencên Xwedê de dibe qamçî."*[450] Jêdera me ya 60 salî, serpêhatiya xesûya xwe û maran weha vedibêje:

> "Xasiya mi go, 'Salikê, maran dikire me bixwin. Xanî tiji mar bûwû. Em çûn mala Ap Eyîzê (qurban bim). Hewk ax dan me. Go, '*Bere, bavê dorê xênî!*' Me anî, avitê. Mi, hen jî kir avê û vexwar. Wê hîngê û vir da, me mar di mala xwe da nedîne. Heqet jî mar diçû ser sepetê wê lê pê nadigirt. Wê bi xa li mi ra digo."[451]

---

447 Jêder: 21, 45.
448 Jêder: 4, 5, 13, 85.
449 Jêder: 64, 70, 72.
450 Jêder: 16.
451 Jêder: 140.

Li gorî baweriyê, marê avê jî bi mirov venade. Gelek caran zarok û xortên diçin masiyan, dema ku li qeraxên golan û çeman destên xwe dixin bin kevir û rehên daran, ji dêvila masiyan bi şaşî maran digrin. Dema ku çav bi marê di destê xwe de dikevin, ditirsin û mar diavêjin aliyekî.[452] Lê pêvenedana marê avê, dibe ku tenê baweriyek be. Lewra ji bilî ceribandinên hin mirovan, di dest me tu agahî nînin.

Di nav gelê li herêmê de, derbarê pêvedana marê gewr û marê sor (marê cûn) de gelek serpêhatî hene. Di jiyana gundan de li ber pez, li nav erd û rezan mirov rastî van maran tên. Carinan mar bi dest û lingên mirovan vedidin. Di rewşên weha de jiyana mirovan dikeve xetereyê. Li gorî agahiyên ku jêderan dane, li herêmê gelek kesên ku ji ber pêvedana maran jiyana xwe ji dest dane hene. Yek ji van serpêhatiyan ji aliyê jêdera me ve weha hate vegotin:

> "Xelê Alî Hesê- bavê Xelî Xelê- pê mir. Go, çûn Aşê Kurfê. Î nêzikî Zorkûyê ye. Çûn ku herin qewalekê (îcare) bigrin, ew bi Hesenê Topel va... Go, Hesen go, 'Bi rê va, Xelê bi rê va du sê kûsiyê ku xa li avê ra dikişandin, avitin nav bendê.' Hesen go, 'Mi got, Xelo! Hung meke; guneye. Ê herin nav êş, tev li nav arvanî xelkê biwin, xadî êş ê fedi bike.' Bi bîstikê ye ha, wî go. Min li Hesen bihîst. Go, 'Bi carkê va qirînî bi Xelê ket. Mêr pêva dawû. Êkî gewr bû.' Go, 'Mi Hesen pişt kir û anî mal.' Ti bi ser ra derbas newû, pê mir."[453]

Di rewşa pêvedana maran de rêbaza nojdariya berbelav mêtina jehrê ye. Li gorî jêderan, berê hin kesên biocax û wêrek ku jehra maran dimêtin hebûne. Piştî ku mar bi yekî/ê veda ji aliyê jor ê cihê ku mar pê vedaye ve dihate girêdan. Da ku jehr tev li xwînê nebe û li canê mirov belav nebe. Piştre berê xwe didan hekîmên Kurmancî. Hekîmên Kurmancî bi alîkariya hinek şîr ev cihê ku mar pêve daye bi devê xwe dimêtin û tûyî erdê dikirin, heta ku jehr ji nav laşê nexweş derdikeve.

Li gundê Malê Ber Dihu, Hemê Mistê (m. 1986), yek ji pisporên

452 Jêder: 125, 134, 142, 159.

453 Jêder: 27.

vî karî bûye. Hemê Mistê, li herêma Hemzik kesekî bi nav û deng bûye. Dema ku mar bi yekî/ê vedaye, anîne ba wî yan jî ew çûye ba kesê/a ku mar pêve daye. Wî bi kêrê yan cîlatê birîn hinekî din qelaştiye û devê xwe xistiye devê birînê. Ew xwîna bijehr mêtiye/mijiye û tû kiriye. Piştre şîr di devê xwe werdaye. Ew şîra bi bandora jehrê di devê wî de qûsiyaye, bûye toraq. Ew yek heta ku xwîna paqij hatiye dubare kiriye. Piştre hinek şêranî (dims û hwd.) daye nexweş. Nexweş xwe dirêj kiriye. Piştî çend rojan ya miriye ya jî rabûye ser xwe. Yek ji xizmên wî weha behsa Hemê Mistê dike:

> "Di gund (Hesenkan-Malê Ber Dihu) da Hemê Mistê hewû. Apê bavî min bû. Zêhra maran dimêt. Dermanê kula jî zaniwû. Li kula mêzi dikir. Derba mêr dimêt, tû dikir. Paşê şîr di devî xa werdida û dîsa dimêt. Heta ku ew zêhra dimêt. Paşê şûna birînê girêdida. Hen bi hen xaş diwûn. Hen jî dereng diman; ki mêr pê digirt, heta dianîn cem Hemî Mistê, zêhr li xûnê bela diwû; pê dimirin."[454]

Li Semsûrê li dijî maran nistiyeke ku jê re dibêjin *"Avzîm"* jî heye. Li gorî baweriyê kesê/a hatiye avzîmkirin mar nikare nêzîk bibe û her weha nikare pêve bide. Li gorî baweriya gel, ku mar nêzîkî kesê/a avzîmkirî bibe di şûna xwe de hişk dibe û nikare xwe bilebitîne. Ji ber wê ew kesê/a avzîmkirî bi rihetî dikare wî marî bikuje.

> "Aw Motik hewû. Herkesî xa li ba wî avzîm dikir. Ez jî çûm, wê hîngê ezî sivik[455] bûm. Çend dîa xa ra xandin, ku tiştinî din jî kir nekir, nê bîra mi. Ez diwêm qey mi destmizek jî dayê û ez hatim. Ku ez nişka va li ser mêr ve diwim, mar di şûna xa da hişk diwe. Ez radilim boçikê û li erdê dêxim, wî dikujim. Mar nikanin nîzik mi biwin."[456]

Li herêmê hin pêkanînên din jî hene: Wekî bikaranîna benîştê benîştokê û pelên kizwanan. Wan dikelînin û didin ser devê

454 Jêder: 17.
455 **Sivik**: Piçûk, naşin, çalak.
456 Jêder: 71.

birînê. Car caran jî piştî mêtina jehrê, birînê bi ava pelê kizwanan dişon:

> "Benîştê benîştokê. Çiloyê wê dikelandin, didan ser devî birînê.[457]
> "Çi dar û ber heba gi dixistin nav avê, dikelandin, meri di nav da didan rûniştandin"[458]

Li herêmên din jî pêkanînên rengîn hene:

- Li Muğlayê ji bo dermankirina pêvedana maran pirparê dikelînin û bi ava wê pirparê birînê dişon. Devê birînê hinekî din dibirin, rûnê zeytûnan di devê xwe werdidin û birînê dimêjin û diavêjin. Goştê çêlikê pisîkan dikutin û didin ser birînê.[459]

Li gorî baweriya gelê Diyarbekirê, gelê herêmê li dijî pêvedana mar û dûvpişkan bi tilsima şêxekî hatiye parastin. Li gorî rîwayetê, carekê şêx xwestiye derbasî nav hewşa Mizgefta Mezin bibe. Marekî reş, xwe li ber sîvenega mizgeftê veşartiye û xwe daye benda şêx da ku bi vî vede. Şêx, mar dîtiye û mebesta wî fêm kiriye. Li nav çavê wî marî nihêrtiye. Mar di cih de bûye hesin. Ji wê rojê û pê ve gelê bajêr li dijî mar û dûvpişkan hatiye parastin. Ew hesin îro jî li ber sîvenega Mizgefta Mezin ya Diyarbekirê ye. Mêvanên ku serdana wê mizgeftê dikin bi vê rîwayetê têne pêşwazîkirin.[460]

Mar, di nav çand û folklora Semsûrê de cihekî girîng digre. Di gelek çîrok, efsane, metelok, gotinên pêşiyan, biwêj û gotinên teşegirtî de behsa mar derbas dibe. Di hin rewşan de wekî mînakeke baş lê piranî wekî mînaka xerabiyê tê nîşandan. Li jêr çend gotinên gelêrî yên girêdayî mijarê hatine rêzkirin:

"Mar bi marbûna xwe, axê dixwe biqinyat."

(Gotina pêşiyan e. Wate: Divê mirov hebûnên di dest xwe de

---

457 Jêder: 8

458 Jêder: 96.

459 Sever Görgen Satır, *Muğla'da Halk Hekimliği*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Ankara Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Halk Bilimi Anabilim Dalı, Ankara 1994, r. 95.

460 Hayreddin Kızıl, *Diyarbakır ve Çevresindeki Dini Anlayışta Mitolojik Unsurların Etkisi*, r. 94.

bi pîvan bi kar bîne. Belawela neke; ne destbelayî be.)

"Çêlikê mar bêjehr nabe." (Gotina pêşiyan e. wate: Zarokên dijminan jî bi hestên dijminatiyê têne mezinkirin. Ji ber vê yekê jî divê mirov li dijî zarokên dijminan zêde bi rehm nebe.)

"Mar boça xwe gez nake." (Gotina pêşiyan e. Wate: Kesên xerab zirarê nadin xwe û yên wekî xwe.)

(Av, ar (agir) û mar." (Sê tiştên xetere ne. Divê mirov bi baldarî nêzî wan bibe.)

"Mîna marê bin batovê (botav).", "Mîna marî kwîr." (Biwêj in. Wate: Ji bo kesên fenek û fisek ku di xafil de zirarê didin kesên derdora xwe, tê bikaranîn.)

Berî pêşketinên di warê tenduristiyê û hişmendiya civakê, kesê ku mar pêve daye dibirin ocaxan. Piranî mala dede, mela û şêxan. Wan, ji kesê ku mar pêve daye re dia dikir û ax dixistin nav avê dihelandin. Ew ava bi nexweş didan vexwartin. Nedihiştin ku heta sibehê razê. Dew, mast, şîr û hwd. bi ser ve dikirin. Wisa dihate bawerkirin ku jehr û qatix li hev nayên. Ew ê jehrê bike toraq û bi verîşînê re derxe biavêje.[461] Di salên dawî de kesên ku derba maran dimêjin nemane. Dema ku mar bi yekî/ê vedide, bi lez wî/ê digihînin nexweşxaneyan. Wî/ê li wir derman dikin. Lêbelê dema ku jehr zû belav bibe yan nexweşîneke din ya kesê/a mar pê vedayî hebe, wê nexweşiyê xedartir dike û nexweş dikuje. Li gorî daneyan pêvedana maran di demeke kin de dibe sedema qeyrana dil. Ji ber vê yekê gelek kesan jiyana xwe ji dest daye.

### *Pêvedana Dûvpişkan*

Dûvpişk, lawireke bi jehr e. Ji ber vê yekê jî bi xetere ye. Mirov jê ditirsin. Lewra, li herêmê gelek kesan ji ber pêvedana dûvpişkan jiyana xwe ji dest dane û hîn jî bûyerên bi vî rengî têne dîtin û bihîstin. Li cihên ku axa wê gewr be hîn zêdetir in. Piranî li nav pag û xerabeyê malan de dijîn.

Di nav gel de, li dijî pêvedana dûvpişkan dermanekî zelal nîne. Lêbelê dîsa jî mirov li hin tevdîran digerin. Berê, dema

461 Jêder: 6, 19, 36.

ku dûvpişkê bi kesekî/ê vedida, av dikelandin, hinek xweliya êzingan dixistin nav û tevdidan. Piştî ku xweliyê danişt û av zelal bû bi wê avê serê wî/ê dişûştin. Berî ku dûvpişk bi yekî/ê vede, diçin axa ziyaretan tînin û li dora xanî, ber deriyan û hwd. direşînin.

## Bûkik

Bûkik nexweşîneke çavan e. Navê vê nexweşiyê yê latînî Hordeolûm e. Enflamasyona/Îltihabbûna bezên pêlûyê ye. Gava ji follîkulên mijangan, bezê zeîssê û bezên mollê yek jê enfeksiyona purulanê wergire bûkik çêdibe.[462] Bi kurt û Kurmancî, ji ber kêmgirtina bezê ser çermê birû, mijang û çavê mirovan dertê. Gel sedema vê yekê nizane. Carinan li aliyê jorîn carinan jî li aliyê jêrîn xuya dibe. Nexweşîn bi şev çêdibe lê mirov serê sibehê pê dihesin. Piranî li çavekî dertê. Lêbelê dibe ku li her duyan jî belav bibe. Çavê mirov diwerime û heta çend rojan jî derbas nabe. Gava pêlûya çav enfeksiyonê bigre, çav diwerime. Hebikekî jî diêşe. Çav baş nabîne. Nexweşineke vegir e. Lê di nav çend rojan de xwe bi xwe baş dibe.[463] Di nav gel de ji bo çareserkirina nexweşîna bûkikê çend pêkanîn dermanên Kurmancî/Kurdewarî hene:

> "Bi paçkî pak, hewik demê çayê lê dikin û bi germi didin ser çava. Sewê ku werimê xa dakeve û şewatê xa bişkê."[464]

Bi dema çayê ya germ paçikekî paqij yan kitanekê şil dikin û bi germî didin ser bûkikê. Wisa tê bawerkirin ku ew destwerdan werima çav dadixe û êşa wê jî kêm dike.

> "Dendikekî sîrê spî dikin, dikutin ya jî bi xagi û di kulê didin."[465]
> "Dibêjin bira bûkeke ku bi pismamê xa ra zewiciye, gustîra xa di wê werimê bide, ew ê xaş biwe."[466]

---

462 Rahmi Duman, Reşit Duman, *Göz Kapağı ve Hastalıkları*, Derman Tıbbi Yayıncılık, Ankara 2015, r. 35.
463 Jêder: 7, 22, 30.
464 Jêder: 42.
465 Jêder: 95.
466 Jêder: 110.

Dendikekî sîrê spî dikin û di cihê ku werimiye didin. Li hin gundan jî zêrê stûyê bûkan di kulê didin. Wisa tê bawerkirin ku zêr nexweşînê çareser dike.[467]

## Serêş

Yek ji nerihetiyên berbelav jî serêş e. Di nav civakê de rêjeya serêşê ji sedî 90 e. Ji sedî 90ê serêşê jî mîgren û êşa ji ber hêrsbûyînê ye. Serêşiya ku têkiliya wê bi nexweşînên din re tuneye û yekser çêdibe, serêşa sereke (prîmerî) ye. Ev serêşa ji ber mîgrenê, serêşa ji ber hêrsbûyînê û serêşên gumletî ne. Serêşa duyemîn (sekonderî) jî, rêjeya rûdana wê ji sedî 10 e. Ev yek, ji ber nexweşînên din çêdibe. Di dema nexweşînên tamarên serî, nexweşînên pergala rehikan, kulên (tumor) mêjî, nexweşînên çavan, sînuzît, menenjit û hwd. serêş çêdibe.[468]

Di nav gel de, ji hemû nexweşiyên girêdayî serî re (wekî, sînîzut, mîgren û hwd.) serêş tê gotin. Gelek sedemên serêşê hene. Carinan ji ber betilînê yan bêxewiyê çêdibe; carinan ji ber rewşên nebaş yên wekî şerm, aborî, hêrs, xemgînî û hwd. ku mirov dixe tengasiyê serê mirovan diêşe. Kêm caran be jî serêş, diyardeya nexweşînên xedar e.

Di nav gel de, ji bo çareserkirina serêşê gelek dermanên Kurmancî/Kurdewarî têne bikaranîn:

- Di serî de girêdana serî ya bi kitanekê yan şidikekê tê. Ew tevger di nava çanda Kurdî ya devkî de jî cihê xwe girtiye. Dibêjin, "Serê ku naêşê tê çima şidikê bidî ber." Yan jî "Serê ku naêşê şidikê dide ber." Bi wateya tiştên ku ne karê meriv be, divê mirov têkil nebe.[469]

- Ji bo kêmkirina êşa serêşê, hin kes paçikekî dixin nava ava sîrkeyê, piştre wî paçikî diguvêşin û li dora serê xwe dişidînin.[470]

- Piranî jinên navsere yan pîr ji bo ku ji serêşê xelas bibin

467 Jêder: 10, 25, 38, 44, 70, 79, 91, 100, 126, 150.

468 Türk Nöroloji Derneği, "Baş Ağrısı Nedir?" https://www.noroloji.org.tr/menu/95/bas-agrisi (14.09.2018).

469 Jêder: 18, 29, 30, 45, 70.

470 Jêder: 1, 2, 17, 50, 55.

porê xwe hine dikin.[471]

- Kalemêr û pîrejin piranî birmotiya ku ji titûna hûr û bizrê qurnefîla kutayî pêk tê dixin nav qutiya birmotiyê û carê hinekê dikişînin bêvila xwe. Ew titûnê ku dikeve bêvila mirovan rê li ber pişkîna mirovan vedike. Êşa serî hinekî sivik dike.[472]

- Heger serêş, ji ber xitimîna poz û bêvilan be paçikekî dişewitînin û dûxana wê dikişînin nava xwe.[473]

## Bêhişketin

Bêhişketin, bi navê xwe yê latînî *Senkop*, bi awayekî demborî kêmbûna rêjeya xwîna ku diçe mêjî (perfuzyona serebîral) û jihişçûyînê ye. Bi awayekî dîtir, di zimanê tibê de ji bo bêhişketinê û hişçûyîna demborî *senkop* tê gotin.[474] Ev rewş bi piranî dema kêmbûna tansiyonê pêk tê. Dil têra xwe hewl nade û nikare têra xwe xwînê bişîne bi ser mêjî de. Berî ku hişçûyîn pêk bê, dinya li ber çavên mirov tarî dibe; dewxa mirov diçe; rengê mirov gewr dibe; laş disincire; dilxelîn û hwd. çêdibe. Tirs, kelecan, germbûn, westandin, deverên girtî, hewaya nepaqij, rabûna ser piyan a ji nişka ve (bi carekê ve), kêmbûna şekir, enfeksiyonên dijwar û hwd. sedemên bêhişketinê ne.[475] Di rewşên weha de mirov ji xwe ve diçin, dibin wekî miriyan. Piştî demeke kurt bi dîsa ser hişê xwe ve tên.[476]

Mirov carinan ji ber sedemên cihê bêhiş dikeve. Di demên weha de bêhna mirov diçe tê, dilê mirov hildavêje lê hişê mirov ne li serê mirov e. Wekî miriyekî, mirov hay ji xwe û derdora xwe nabe. Ev yek piranî nîşana nexweşîneke mêjiyî ye. Nojdariya nexweşînên mêjiyî bi dermanên Kurmancî/Kurdewarî ne gengaz e. Dermankirina van nexweşînan tenê bi rêbazên

471 Jêder: 5, 14, 32, 48, 50.

472 Jêder: 3, 4, 9, 73, 80.

473 Jêder: 6, 15, 20.

474 S. Naz Yeni, "Senkop: Nörolog Bakışı", *Trakya Üniversitesi Tıp Fakültesi Dergisi*, 2010; 27 (1), r. 74-78.

475 "Bayılma-Baygınlık", http://www.isg.yildiz.edu.tr/images/files/tiek.pdf (12.01.2018).

476 Jêder: 13, 30, 45, 48, 67.

bijîşkiya modern dikare pêk bê. Wek mînak, nexweşîna zerikê dibe sedema bêhişketinê. Di bêhişketinê de xetereya herî mezin derbxwarin e. Heger mirov di dema ketine de derbê nexwe, bi hin pêkanînên piçûk di demeke kin de mirov vedigere ser hişê xwe. Di dema bêhişketinê de heger serê mirov li cihekî bikeve dibe ku bibe sedema birînbûnê, çûyîna xwînê ya ser mêjî heta dibe ku bibe sedama mirinê jî. Heger mirov di dema bêhişketinê de li ser rêyekê be yan jî ajovanê seyareyekê be bi gumana mezin dê qezayekê bike.[477]

Li herêma Semsûrê di vê mijarê de çend pêkanînên sereke hene:

Kesê/a ku bêhiş ketiye li erda rast dirêj dikin û bi ava sar yan jî qolonyayê hewl didin ku wî/ê hişyar bikin.[478]

Pîvazeke hişk bi kulman hûr dikin û didin ber pozê kesê/a bêhişketî. Bawerî ew e ku bêhnên tûj û balkêş mirov vedigerînin ser hişê xwe. Her weha baweriyeke din jî ew e ku, cin hişên mirovan dibin. Dema ku bêhna pîvazê diçe wan dev ji mirov berdidin û diçin.[479]

Heger ew rewşa bêhişketinê li ser hev pêk bê, kesê/a nexweş dibin ber ziyaretên wekî Zagê (Şêx Evdirehmanê Erzincanî), Ziyareta Bê (Yel Baba), Hecî Ûsiv û hwd.[480]

Ji wan kesên ku tê bawerkirin ku têkiliya wan bi dinyaya cinan re heye rica dikin da ku nivişteke çêke. Nivişte dixin stûyê kesê/a nexweş.[481]

Heger rewşa bêhişketinê demeke dirêj biajo, sîlleyekê (şiqamekê) duduyan li ser rûyê kesê/a bêhişketî dixin.[482]

Heger ew rewş bidome û rojê çend caran dubare bibe, êdî nexweş dikeve kategoriya kesên dîn û dibêjin "Ba li ser e." Di rewşên weha de, nexweşan dibin ber tirba Zagê, Êl Bawa (Ziyareta Bê) û Hecî Ûsiv. Hin kes, bawer dikin ku ev nexweşîn ji

477 Jêder: 10, 15, 19, 22, 36, 58, 94, 107.
478 Jêder. 64, 83, 91, 96, 108.
479 Jêder: 3, 5, 18, 19, 44.
480 Jêder: 11, 28, 59, 60, 63, 78, 79, 86, 90, 112, 137, 150.
481 Jêder: 13, 16, 21.
482 Jêder: 5, 6, 10, 14, 19, 30.

ber cinan çêbûye. Ew jî nexweşê/a xwe dibin cem cindaran. Ew *"xoce"*, li ser kesê nexweş, hin diayan dixwînin; pixurê, hermelê û hwd. dişewitînin; bi awayekî sembolîk li hin amûr û têkberan didin, dengên ecêb derdixin.[483] Tê bawerkirin ku bi vî awayî cinên li dor nexweş tên qewirandin û nexweş baş dibe.

Heger nexweşîn ne mayinde be, tu tiştekî nekin jî dê nexweş piştî demeke kin bi ser hişê xwe ve were lê heger lingê nexweş hinekî bêne bilindkirin û xwîn here ser mêjiyê wî/ê ew ê zûtirîn bi ser hişê xwe ve were.

## Firka Piştê û Fitiq

Firka piştê, di zimanê tibê de wekî *hernîsiya diskan* tê binavkirin. Gava movikên derî kirkiroka di navbera derzên pişta mirov de zorê didin xwe, yekparebûyîna laşî (anatomîk) xera dibe û ew beşa nermik a di hundir de xwe diavêje derve. Movika ku fitiqî dibe yanî ya ku ji cih derketiye, zorê dide rehikên cihoka movika piştê (qenala spînal). Rehikên derzanekan jî pir qels û hesas in, lewma ev rewş dibe sedema nexweşîna firka piştê.[484]

Gava mirov demeke dirêj ziq (sabît-bêlebat) bimîne, dûr û dirêj dirêjkirîbe, ji nişka ve xwe tev bide, demeke dirêj rûniştî bimîne, sermayê bigre û hwd. firk dikeve piştê. Di rewşên weha de mirov nikare xwe xwar bike û bi rihetî rabe ser xwe. Firka piştê, rewşeke demborî ye. Gava laş bê germkirin, xwîn baş biçe û bê û çend tevgerên ku laşê mirov verise (egzersiz) bên kirin baş dibe. Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de, kesê ku firk ketiye pişta wî/ê serî li hekîmên Kurmancî yan "pispor"ê firkê dide. Kesê/a nexweş li ser zik xwe li pêşiya wî/ê dirêj dike; pişta xwe pas dike. Hekîm, bi destan pişta wî/ê demekê mist dide, piştre bi bi çermê pişta wî/ê digre û dikşîne heta ku dengê qirpiniyê ji pişta mirov tê.[485]

483 Jêder: 19, 32, 44, 45, 59, 71, 92, 103, 115.

484 Betül Çevikcan, Sadık Kara, "Bel Fıtığı Hastalığı Bulunan Bireylerin Bel ve Karın Kası Fonksiyonlarının Elektromyografik Analizi", *Elektrik-Elektronik-Bilgisayar Mühendisliği 12. Ulusal Kongresi ve Fuarı Bildirileri*, Eskişehir 2017.

485 Jêder: 9, 10, 14, 75, 90.

"Pişta meriya diêşiya mist didan, mist didan dikişand, digot kirt. Ew firk bû."[486]

Hin kes ji bo bu firka fiştê nerm bikin û ji holê rakin, beroşek ava germ amade dikin û di nav de rûdinin. Pişta xwe bi sabûnê mist didin. Heger li bajaran bin, diçin hemamê. Li ser wî kevirê germ xwe dirêj dikin. Bi saetan li ser dimînin. Firka pişta wan vedibe. Piştre xwe dişon û dertên. Berî ku derkevin derve, bi destmalekê, pêşgirekê û hwd. pişta xwe girêdidin, da ku sermayê negrin.[487] Li navçeya Cêlikan, kesên ku firk ketiye pişta wan, diçin avgermê û li vir rojekê derbas dikin.[488]

Fitiq, ew êş e ku di nav derzanekan de rû dide. Fitiq, êşeke domdirêj e. Piranî li nav movikên piştê de peyda dibe. Êş dikeve nav movikên piştê û dernayê. Di nav gel de fitiq, wekî êşa piştê ya demdirêj tê zanîn. Lêbelê ev agahiyek kêm e. Ne tenê li piştê, li deverên wekî stû, ling, kulîmek, dest û hwd. jî fitiq çêdibe. Ango li her devera ku movik tê hene dikare çêbibe. Lêbelê li Semsûrê û derdora wê, tenê ji bo êşên li piştê û derdora piştê ev têgeh tê bikaranîn.

"Li gundê Narincê dûyî pez û hêngiv di nav hev da dikutin û didin ser fitiqa pişta xa."[489]
"Li ser kulavekî ya jî textekî radimedin."[490]
"Şûnê ku fitiq lê heye, bi benî piştê ya jî bi kavûşekê pêt girêdidin."[491]
"Derin avgerma û hemama."[492]

Li herêma Semsûrê ji bo fitiqê hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî weha ne:

- Pêkanîna berbelav benîştê reş e. Li Semsûrê li bazara hesinkaran tê firotin. Hin ji wan hesinkaran wî benîştî bi xwe

486 Jêder: 86.
487 Jêder: 7, 14.
488 Jêder: 20, 121, 122, 146.
489 Jêder: 8.
490 Jêder: 5.
491 Jêder: 149.
492 Jêder: 50.

çêdikin. Li gorî gotinên jêderekî hesinkar ku vî benîştî difiroşe, ew benîşta ji qîrê, cureyekî kulîlkan û hin têkberên din çêdibe. Ev kulîlk li aliyê Cizîrê, li çiyayan tê berhevkirin. Hemû têkberan tevlihev dikin, germ dikin û bi saetan dikutin. Piştre, paçikên pemboyî (bi gotina herêmî *"keke bêzi")* bi qasî bihostekê çargoşe jêdikin. Hinek benîştê reş bi germî lê pahn dikin, heta ku sar bûye radixin, piştre radikin û hiltînin. Kesên ku ji fitiqê bi qazin in, wî benîştî dikirin û li pişta xwe dixin. Taybetiya benîşt ew e ku heta demeke dirêj xwe bernade. Carinan bîst rojan jî li ser piştê dimîne. Wisa tê bawerkirin ku ev benîştê reş pişta meriv germ dihêle û êşa nava wê dikişîne. Piştî ku pişta mirovan baş bû, hêdî hêdî xwe berdide.[493]

- Li hin gundan dûvê pez û hingûv di nava hev de dikutin, didin ser cihê fitiqê.
- Hin diçin avgerman.
- Gelek kes jî pişta xwe hişk girêdidin û li ser depekî rast, li ser piştê radizên.
- Heger kesên ji ber fitiqê bêzar ku ji pêkanînên li jor sûdê wernagrin, serî li hekîmên Kurmancî -li herêmê wekî "fitiqçî" têne binavkirin- didin. Hekîmên Kurmancî, nexweşan li ser dev û rû dirêj dikin. Berê, cihê ku fitiq lê ye diyar dikin. Piştre, bi rûnê zeytê cihê ku fitiq lê ye mist didin. Piştre bi rêbaza mist-danê, kişandinê, dewisandinê û hwd. hewl didin ku êşa fitiqê kêm bikin. Hin ji wan hekîman bi dermanên taybet ku bi xwe çêkirine fitiqê derman dikin.[494]

Gelê herêmê îro jî ji bo çareserkirina êşa firkê û fitiqê serî li rêbazên dermanên Kurmancî/Kurdewarî dide. Lewra, kesên ku diçin nexweşxaneyan bi pêşniyara ameliyatê, bi gotina herêmî *"ketina bin kêrê"* re rû bi rû dimînin. Bijîşk, nexweşan derbarê xetereyên bin kêrê (mirin, pûçmayîn, astengdarî û hwd.) de nexweşan hişyar dikin. Gelek nexweş ji ameliyatê ditirsin û naxwazin ku xwe bidin ber gumana van xetereyan. Ji ber vê yekê -bi pêşniyara nas, dost û merivên xwe- careke din berê xwe didin

493 Jêder: 65.
494 Jêder: 101, 106, 114, 118, 151, 153, 157.

bijîşkiya gelêrî. Her weha, nojdariya bi rêbazên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî ji nexweşan re erzantir tê.

### Tetirxamî

Di zimanê tiba nûjen de navê wê xwînîbûna sûbaraknoîd (SAK) e yanî xwînîbûna mêjî ye. Gava xwîn biçe tev li ava mêjîpiştê (BOS) bibe pêk tê. Nexweşîn xwe bi serêş, dilxelîn û hişçûyînê nîşan dide.[495] Li gorî diyardeyên nexweşiyê ku ji aliyê jêderan ve hatine dayîn tetirxamî ji ber gelek sedeman çêdibe. Hin kesên jêder ji bo vê nexweşînê dibêjin *"Tetirxamî, jehrîbûna ji ber xwarinê ye."* Hin dibêjin, *"Tetirxamî, ji ber zerikê, zafranê hwd. çêdibe."* Li gorî hin jêderan tetirxamî, *"Ji ber tansiyona bilind, qeyrana dil, xwînîbûna mêjî, yan jî ji ber xwarina zêde"* çêdibe. Lêbelê divê bê zanîn ku ji wan jêderan tu yeke jî di warê tibê de tu perwerdehî nedîtiye. Hemû cerebe û ramanên wan yên takekesî ne:

> "Va tetirxama gi ji zafran kesesi ye."[496]
> "Tetirxamî, mîna qelp qrîzê niha bû. Nişka va dimirin."[497]
> "Tetirxamî, qelp qrîzî ye."[498]
> "Tetirxamî, vedirşiyan. Piya girê didine."[499]

Kesên *"spîsax"* ji nişka ve dilê wan li hev dikeve, vedirişin. Gelek ji wan nexweşan di cih de dimirin. Yên ku ji mirinê xelas dibin jî gelek ji wan pûç/kût (felç) dimînin. Kêm kes vedigerin ser tenduristiya xwe ya berê. Sedema wê baş nayê zanîn. Lêbelê kesên ku ji ber pirsgirêkên derûnî, namûs, aborî, siyasî, evînî, navmalî û hwd. gelekî aciz in; zêde xemxwar in û dikevin nav mitalan, gumana wan ku tetirxamî bibin zêdetir e. Westîna zêde jî rê li ber tetirxamiyê vedike. Di rewşeke weha de nexweş bi carekê ve xwîdaneke sar dide. Li gorî baweriya gel, heger mirov

495 "Beyin Kanaması", https://aciltıp.com/subaraknoid-kanama (29.12.2018).
496 Jêder: 10.
497 Jêder: 12.
498 Jêder: 5.
499 Jêder: 9.

venerişe jixwe dê bimire. Lê heger verişe dibe ku ji mirinê xelas bibe.[500] Jêder, Süleyman Taşçı pêvedana hin cureyê kurmoriyan wekî sedema tetirxamiyê nîşan dide û serpêhatiya xwe ya tetirxamiyê weha vedibêje:

> "Niha merî şîvê sar jî bixwe carna tetirxamî diwe. Bi dilê meriya digre. Ku merî venerişe ê bikuje. Rokê ez î li nav êrd (b) ûm, gêrikekê ningê mi gez kir. Mi dî ku ji jêr va canê min î pûç diwe. Ez rawûm, mi li çilûyê balicanê reş heta ê gêris çi giya hewû mi gi xwar. Mi xwi da. Ez li ser piştê raketim. Heta ku ez yawiş yawiş bi ser xa va hatim. Gêrik dihere goştî marê mirî dixwe, loma ew zêhra derbasî gêrika diwe."[501]

Li gorî jêder Yusuf Hazar (Xoce) ê 84 salî, tetirxamî nexweşîna mîdeyê ye û çareya vê nexweşiyê ya tibî jî tuneye. Ew bi xwe ji bo çareserkirina nexweşîna tetirxamiyê ji *Kitaw (kîtêb)*a xwe ayetan dixwîne. Rûpela ku bixwîne li gorî navê kesê/a ku serî li wî daye ango navê nexweş diyar dike. Navê mirovan dinivîse, li gorî hesabê ebcedê li hemberî kîjan tîpê çi reqem hebe diyar dike; piştre hemû hejmaran berhev dike. Sisêyan jê dikuje. Feslê çaremîn dixwîne.

Hin kes, ji bo çareserkina pirsgirêka tetirxamiyê, serî li ziyaretan didin:

> "Sewê tetirxamê, tu dikî herî ber *Erew Dede*. Tetirxamî, î mîna qelp qirîzî ye. Meri ji nişka va vedirişe. Mirîşk dibirin li ber ziyaretê şerjê dikirin. Digotin "Va tetirxamî bûye. Şalmê rehet biwe. Li Pîrînê û berjor ê nîzikî Palaniyê ye. Ê di devî nalê da ye."[502]

Piştî tetirxamê, piranî aliyekî mirovan pûç dimîne. Malbata kesê/a nexweş, ji bo ku tenduristiya kesê/a nexweş baş bibe serî li ziyaretan dide. Li herêma Semsûrê ji bo tetirxamê serî li ziyareta "Erew Dede" didin. Dia dikin ku nesaxê wan bigihêje tenduristiya xwe. Ev ziyaret li bakurê gundê Pîrînê, nêzîkî gundê

500 Jêder: 1, 9, 13, 28, 36, 44, 89.
501 Jêder: 10.
502 Jêder: 13.

Palaniyê ye. Dema ku diçin ber wê ziyaretê bi xwe re mirîşkekê dibin û li wir serjê dikin; dikin loqme belav dikin. Loqmeyê ku li ber ziyaretan çêdibe piranî dan/sawarê bilxurê bisîr e. Berê mirîşkê dikelînin. Bi ava mirîşkê sawarê çêdikin û goştê mirîşkê jî didin ser sawarê û li mêvanên ku hatine ber ziyaretê belav dikin. Kesê/a nexweş jî ji wê xwarinê -bi niyeta şifayê- dixwe. Şîva mayî jî -heger bimîne- wekî teberik vedigerînin mal û li kesên ku nikaribûne werin ber ziyaretê belav dikin. Ew kesên ku ji wî loqmeyî dixwin dia dikin. Dibêjin, *"Heger ku we bi çi niyetê kiribe, Xwedê loqmeyê we qebûl bike."*[503]

Malbat û nexweş piştî serdana Erew Dede, demekê li benda başbûna tenduristiya nexweş radiwestin. Heger nexweşîn derbas nebe serî li derman û ziyaretên din didin.

Hin kes serê nexweşê tetirxamî bi ava xweliyê (ariya êzingan) dişon. Berî ku avê germ bikin li nav malan digerin û li ariya êzingan ya sar û paqij dipirsin. Ariya êzingên dara maziya be çêtir û paqijtir e. Piştre avê di beroşeke mezin de germ dikin. Piştî ku av germ bû çend mist xwelî/arî diavêjin nav avê û li hev dixin. Agir kêm dikin û ji bo ku xwelî dakeve binê beroşê hinekî disekinin. Heger gemar di nav xweliyê de hebe ya bi ser avê dikeve ya jî dadikeve binê beroşê. Avê hêdika radikin û di parzûnê re derbas dikin û valayî satilekê dikin. Piştre bi wê avê serê kesê/a nexweş dişon. Li gorî baweriyê, xwelî avê nerm dike û taqetê dide kesê/a nexweş.[504]

Di serdema tetirxamiyê de wekî xwarin tolikê li çolê berhev dikin û tînin malê. Dişon û hûr dikin; dikelînin û berê ava wê hinekî bi ser nexweş ve dikin, bi wî/ê didin vexwartin. Heger karibe bixwe, ji wê tolikê jî hinekê bi nexweş didin xwarin.[505] Lêbelê sedem çi dibe bila bibe, rastiyek li holê ye ku tetirxamî nexweşîneke xedar û xeternak e. Mirov an dikuje yan jî seqet (astengdar) dihêle. Ji ber vê yeke îro gelê herêmê di rewşên weha de serî li nexweşxaneyan û bijîşkên hemdem dide.

---

503 Jêder: 1, 4, 5, 56, 80, 89.
504 Jêder: 44, 45, 50, 63.
505 Jêder: 5, 138.

## Werimîna laş ya ji ber derbekê yan jî kulekê

Kesên ku li gundan dijîn, sewalvaniyê dikin û bi çandiniyê ve mijûl dibin di jiyana rojane de gelek amûrên wekî tevir, bêr, das, tevşo û hwd. bi kar tînin. Gelek caran bêhemdî derbê ji wan alavan dixwin. Car caran jî li nav erdan kevir bi ser dest û lingên wan de tên û dibin sedema werimîna laşê mirov. Di demên weha de bijîşkiya li malê digihêje hawara mirovan.

- Hinek arvanê genim û xwê dikin hevîr, yekrû[506] dikin û didin ser cihê ku derb xwariye. Jêder Süleyman Taşçı, serpêhatiya werimîna lingê xwe ku bijîşkan kiriye jêke lêbelê wî bi rêbaza bijîşkiya gelêrî lingê xwe ji jêkirinê filitandiye (xelas kiriye) weha vedibêje:

> "Havîn bû. Ez çûwûm nav zeviyê, sewê şixrê cêh. Mi ningê xa da ser şixra cêhê ku ez li bergîrê siyar wim. Bi carkê va bergîrê simê xa rakir û li textikî jinûyê min xist. Min çû hewik qorix anî û bi ser birînê da guvişt. Ez li bergîrê siyar bûm û hatim mal. Roya sisiya, ningê min aha werimî, reş bû. Wê çaxê Hisênê Kodik hewû. Sixxiya bû. Li nav gunda digeriya. Ez çûm ba wî. Lê mêzi kir. Go:
> - Ningî te qangrên e. Tu ê herî xestê, ewê di ser cihê ku reş bûye ra lêkin. Min go:
> - Malxirawo, ez hatime ba te ku tu dermankî li min ra bêyî, tu diwê 'em ê lingî te lêkin.'
> Neyse, ez hatim mal. Min hevîrê gênim çêkir, min girt û da ser, da ser. Devê kulê vewû. Mi rawû sê çar kevçî mot û çengik xwê tev li hev kir û li hev xist, da ser devî birînê. Kewand. Mi ro bi ro, şidika ser bîrînê datanî (yanê werimandina wî dadiket). Mi bi xa û xa ningê xa rehet kir."[507]

Jêderê me, bi xêra ava hersim, hevîrê arvanê genim, dims û xwê linge xwe yê ku ji ber derba sime hespê reş bûye û werimiye ji jêkirinê xelas kiriye.

Di bijîşkiya gelêrî ya Kurdan de pîvaz (bi taybetî jî pîvaza

506 **Yekrû**: Peyveke resen a Kurdî ye. Wate: Ew nanê ku tenê aliyekî wê hatiye pijandin; aliyê din xav dimîne.
507 Jêder: 10.

hişk) wekî dermanê giştî ye. Digel gelek nojdariya (dermandkirina) nexweşiyan -bi taybetî ji bo kêmkirina êşa ji ber derbê û daxistina werimandinê- tê bikaranîn. Bikaranîna pîvazê ya di dermanên Kurmancî de bi gelek şêweyan çêdibe. Di dema dermankirina nexweşiyên din de jî em ê vê yekê bibînin. Ji bo kêmkirina êş û werimandina ji ber derban rêbaza bikaranîna pîvazan weha ye:

Hin kes pîvazên hişk dixin bin agir. Piştî ku pijiya qaşûr dikin, ji hev vediqetînin û didin ser cihê ku ji ber derbê werimiye. Bi paçikekî girê didin û heta sibehê li ser dihêlin. Ev pêkanîna ji bo gelek cureyên din yên werimandinê jî tê bikaranîn.[508]

Pîvaza ku di bin agir de pijiyaye qaşûr dikin û dikutin. Hinek xwê tevlê dikin û li ser paçikekî radixin. Piştre, wî paçikî didin ser devera ku werimiye.[509]

Ji bo kêmkirina êş guh û êşa sitiriyan pîvaza ku di bin agir de hatiye pijandin tê bikaranîn.[510]

Hin kes ji bo ku êş û werima ku ji ber derbê kêm bikin, mewîjên reş tevî dendikan di soqiyekî/hevdikekî de dikutin. Piştî ku wekî benîşt bû li ser paçikekî pahn dikin û didin ser hişkderbê.[511]

Hêjîrên hişk, loqim, peloka dims, bastêq û hwd. jî ji bo daxistina werima hişkderban têne bikaranîn.[512]

Li gorî zanîn, cerebe û baweriya gel, tiştên şêrîn êşê dikişînin nava xwe û bi vî rengî werima laş dadixin. Bi alîkariya van tiştan laş xwe nû dike. Niha jî ji bo werimandinên ku ji ber derbekê pêk tên cemed an jî ava cemidî tê bikaranîn. Lêbelê bikaranîna qeşayê ji bo demeke kin e. Di êş û werimînên demdirêj de dîsa pîvaz û benîştê mewîjên reş tê bikaranîn.

508 Jêder: 12, 20, 34, 41, 71, 143, 144.
509 Jêder: 45, 50, 60.
510 Jêder: 22, 25, 40.
511 Jêder: 5, 6, 16, 26, 33, 52.
512 Jêder: 41, 42, 55, 64, 99, 116.

## Bisipiyaketin

Sipî/sipih cureyekî kêzikan ê piçûk e. Jiyana wan li ser pişta jîndarên din e. Bi vexwarina xwîna wan zêde dibin û dijîn. Bi taybetî di nav axûran de, di nav pûrtê sewalên qels de derfeta zêdebûnê dibînin. Di nav laşê mirovan de jî li herêmên bi kam ku xwîdan didin ên wekî binçeng, navpor, navran, qelîşkên pêçiyan û hwd. bi cih dibin. Cihê ku lê bi cih dibin xwîna mirovan vedixwin. Bi taybetî di nav seriyê jinên ku porê wan pir de zêde dibin û ji wir belav dibin. Nexweşîn vegir e. Bi rêya temasê ji miroveki derbasî yê din dibe. Kesê ku bi sipiya ketiye laşê wî dixure. Tevgera sipiyan ya li ser por û laşê xwe dihese.[513]

Sedema bisipiyaketinê ya sereke qirêjî ye. Berê, wekî niha amûrên paqijiyê yên wekî sabûn, deterjana destan, ya firaqan, ya cilan û hwd. tunebûn. Heger hebûna jî derfetên gel ên aborî, çûn û hatinê rê nedida ku mirov bi hêsanî xwe bigihînin van amûran. Her weha xwendin, zanîn û hişmendiya civakê ya derbarê girîngiya paqijiyê jî kêm bû. Li deverên çolter û gundan binesazî tunebû. Gel bi hêsanî nikaribû xwe bigihîne ava paqij. Ava paqij, ji kanî û bîran heta nav malan li ser pişta mirovan û ker û bergîran dihat. Ew jî têra vexwarin û firaqşûştinê dikir an nedikir. Ji ber vê yekê li gelek gundan çanda "beravê" pêşketibû. Gelê herêmê bi hev re dişêwirî "rojên beravê" dihatin diyarkirin. Cihê beravê ya jinan û mêran cuda bû. Di wan rojan de şêniyên bi hev re diçûn ber çemekî yan kaniyekê. Berê kinc, cil, tej û hwd. dihatin şûştin. Kinc û cilên xwe li ber tavê radixistin. Heta ku ew ziwa bûne, bixwe jî serê xwe dişûştin.[514]

Di demsalên sar de roja beravê dihate betalkirin. Serşûştin û cilşûştin li malê pêk dihat. Mêran û zarokan hundirê malê de, li kijan çaviyê de sobeyê yan argûn hebe li wir; jinan jî piranî di axûran de, di teştê de serê xwe dişûştin. Serşûştin û paqijiyê de bikaranîna ava germ jî kêm bû. Her weha, kêmbûna cil û bergan jî derfet dida zêdebûna sipiyan. Gelek kes tenê kincên li ser xwe dijiya. Dema ku ew dişûştin, xwe li deverekê -bin lihêvê

513 Jêder: 60, 65, 80, 87, 91, 92, 156.

514 Jêder: 1, 2, 3, 4, 5, 6.

an jî li nav dar û deviyan- vedişartin heta ku kincên wan ziwa bûne.[515] Jêderekî di mijarê de weha digot:

> "Kinc tunewûn; wexta ku me kincên li ser xa dişûştin em di nav ciyan da tazî radimediyan heta ku kincên me li derva ziya bûne."[516]

Gelek caran jî mirovan pêdivî bi şûştin û paqijiyê nedîtine. Di vî warî de hişmendî kêm bûye. Jêderek gazinên xwe ji wan rojan dike û weha dibêje:

> "Wele me şik nadiwir ku serî xa bişonî. Sawûn tunewû lê av û ardû pir bû. Mêra xa li ber ça dişûşt. Jina jî di xanî ga da. De di nav kêç û sipiya da seri tê şûştin?"[517]

Ardû kêm bû, sewal û mirov di nav xaniyekî de dijiyan. Di odeyekê de mirov, ya din de jî sewal hebûn. Kesekî/ê bi qatek cil çend sal derbas dikir. Ew cilan serê çend heyvan carekê dihatin dişûştin. Roja ku dişûştin ji mal dernediketin. Lewra, cilekî wan ê duyemîn tunebû. Sipî diketin nav laşê mirovan. Laşê wan dixuriya, qels dibûn. Bi taybetî zarok û jin ji ber vê rewşê gelekî tengezar dibûn. Li deverên wekî qişleyên leşkeriyê, dibistanan, medreseyan, mizgeftan û wargehên xwendekaran sipî diketin nav laşê mirovan.

Li gundan, gel bi karê xwedîkirina sewalan û çandiniyê re mijûl dibe. Îro jî bi heman karan re mijûl e lêbelê derfetên îro çêtir in. Ceyran û binesaziya avê kêm zêde li her gundî heye. Piştî ku ji kar tên serê xwe dişon, cilên paqij li xwe dikin; yên gemarî bi deterjanan û sabûnê dişon. Ji ber ku cil pir in û zû bi zû têne şûştin êdî kêm caran sipî têne dîtin.

Gel ji bo ku ji sipiyan xelas bibe serî li hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî dide:

- Pêkanîna herî berbelav kelandina kincan (cil û berg) e. Di sîtil, beroş û teştên mezin de av tê kelandin û kincan dixin nav

515 Jêder: 25, 29, 80, 100.
516 Jêder: 121, 152, 162.
517 Jêder: 10.

wê avê. Demekê jî bi vî awayî dikelînin. Piştre, bi aveke din têne zelalkirin, guvaştin û raxistin.[518]

- Heger derfet hebe cilên ku bûne hêlîna sipiyan bi rêya şewitandinê ji holê radikin. Jêderek serpêhatiya xwe ya li serdema leşkeriyê weha radigihîne:

> "Em ê li eskeriyê bûnî. Kêç û sipiyan kirin me bixwin. Niva xew tunewû. Şûnê me û ê bergîran ê nêzikî hev bû. Doşegên me jî gi pûş bûn. Ku me aha delingên xa vaca dikirin sipi lê diweşiyan. Rokê, qomtanê ser me hat. Me gi lê ra go. Em birin hemamê me giya serê xa şûşt. Paşê kincê temîz dan me. Ê berê jî me gi avitin ser hev û şewitandin. Te bidiya! Eyn mîna donî miya dikirin çiqi çiq. A ew bû em lê filitîn."[519]

- Li axûran kils (kirêc) tê reşandin, dîwar bi kilsê têne seyandin.[520]

- Carinan jî rayedarên dewletê dihatin gundan û tozeke spî ya bi navê DDT li axûran direşandin.[521]

- Carinan jî rayedarên dewletê dûxanekî biderman berdidin nav axûran. Demekê derî û şibake girtî dimînin. Piştre derî û şibakeyan vedikin.[522]

Îro, wekî berê nexweşîna bisipiyaketinê zêde nemaye; gelekî kêm bûye. Lêbelê kêm be jî carinan mirov bi sipiyan dikevin. Li dibistan, wargehên xwendekaran, baregehên leşkerî, mizgeft û hwd. cihên mezin û qelebalix, nexasim jî zivistanê -ji ber ku serî pir nayên şûştin, laş xwîdan dide û hwd.- sipî çêdibin. Wekî tevdîr, rayedarên tenduristiyê li dibistanan digerin û li nav porê zarokan dinihêrin. Heger li sipiya rast bên berê zarokan didin dermanxaneyan. Li wir, şampuanên sipiyan, toqe, şeh û hwd. tên kirîn û bikaranîn. Bi vî rengî, berî ku nexweşîn berbelav bibe, pêşî lê tê girtin.

---

518 Jêder: 137, 148, 149.

519 Jêder: 10.

520 Jêder: 51, 56, 63, 87, 90, 107, 130, 143.

521 Di çend salên dawî de hate fêmkirin ku ew dermanê bi navê DDT, gelekî xeternak e û bûye sedema mirina gelek sewalan. Ji ber vî çendî, rayedarên dewletê dev ji vê pêkanînê berdane.

522 Jêder: 7, 10, 11, 18, 29.

### Êşa Gurçikan

Êşa gurçikan ji ber gelek sedeman pêk tê. Li gorî karîgerên (faktor) wekî temen, zayend, pîşe, derdora civakî-aborî a nexweşan, raboriya rakendî (irsî) a nexweşîna malbatan û herêma ku lê tê jiyîn cure û teşeya nexweşîna gurçikan diguhere.[523]

Êşa gurçikan ya herî sivik û berbelav ku tê zanîn, êşa ji ber sermayê ye. Dema ku mirov di demên sar de pişta xwe germ negire û xwe nenixumîne gurçikên mirov sermayê digrin. Serê sibehê mirov bi êşa kêleka xwe hişyar dibe. Di rabûn û rûniştinê de gelekî diêşe. Heger mirov pişt û navkêla (navteng) xwe germ bigre û avê pir vexwe êş di navbera du-sê rojan de derbas dibe.[524] Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de kêm zêde herkes bi vê pêkanînê dizane û bi kar tîne. Lêbelê dema ku êşa gurçikan didome, mirov jî ji nexweşînên din ên gurçikan dikevin gumanê û li çareseriyên din digerin. Lewra carinan mirov sîlikê (qûm) diweşînin, carinan di gurçikan de kevir çêdibin, car caran jî ji ber sedemên cihê gurçikên mirovan diêşen, dihelisin û pûç dibin. Li cureyê nexweşînê rêbazên nojdariya bi dermanên Kurmancî/Kurdewarî jî diguherin:

- Dema ku behsa êşa gurçikan dibe av tê bîra her kesî. Lewra êdî gel dizane ku divê gurçik bêav nemînin. Pêşniyara vexwarina ava zêde tê kirin.[525]

- Jêder O.K ku ji ber êşa gurçikan gelek kişandiye, çareserî di kespikan (şeytanokên piçûk) de dîtiye. Li ser şîreta bijîşkekî gelêrî ev derman bi kar aniye. Mistek şeytanokê piçûk kutaye û hinek av berdaye ser. Piştî çend rojan kespik di nav avê de heliyane. Wî, ew ava serê sibehan bi xwirînî vexwariye:

> "Kespik (şeytanokên piçûk) ê pir rind in. Ez çûm tixtor, go amelat. Yekî go, 'Here mistik şeytanok ûne; bikute, hewik av bike ser, bira di nav avê da bihêlin. Wê avê bi xwirînî vexwe.' Min vexwar. Ez rehet bûm, amelat newûm."[526]

---

523 Kamil Serdengeçti, "Nefrolojide Klinik Gözlem", *Cerrahpaşa İç Hastalıkları*, (603-616), İstanbul Medikal Yayıncılık, İstanbul 2007.

524 Jêder: 12, 14, 20, 66, 84, 90.

525 Jêder: 2, 7, 8, 19, 59, 128, 140, 155, 163.

526 Jêder: 21.

- Nexweşên ku xwe "oldar" dihesibînin, heta ji wan hatiye heger ji bo dermanan be jî ji xwarin û vexwarinên *"heram"* dûr disekinin; yên din ji bo ku ji êşa gurçikan xelas bibin ava cehê (bîra) vedixwin.[527]

- Hin kes, porikê garis hişk dikin û ava wê vedixwin.[528]

- Bexdenûzê dikelînin û ava wê vedixwin.[529]

- Li hin gundên Semsûrê, li dijî êşa gurçikan xurekên şêrîn dixwin.[530]

- Ava pûnga kelandî tê vexwarin.

> "Te dî ku bîhna pîs li mîza kurikekî tê, rengê mîzê wî ê şêli ye ya jî ê sor mîna xunê ye, zaniwe ku wî kurikî di gurçikan da serma girtiye. Tê bol bol tiştî şîrîn bidiyê û avê bi ser va kî."[531]
> "Pûng ê rind e. Tê pûngê bikelînî, avê wê biparzînî, sar bikî û vexwî. Pûng wê nexaşiyê gê sokmîş dike."[532]

- Hin kesên ku ji ber sîlikweşandinê ji êşa gurçikan bi gazin in, berê xwe didin *"avgermên"* li herêma Semsûr an jî Elbistanê. Heta li wir bin hem dikevin ava germ hem jî heta ku dikarin wê ava tirş (ava bisoda) vedixwin. Wisa bawer dikin û hewl didin ku bi awayî sîlikê biweşînin.[533]

Li Bursayê, kesên ku ji ber êşa gurçikan nikarin mîza xwe bikin, bistiyên qeresiyan; porikê gilgilan hişk dikin û ji hev cihê dikelînin û ava wan vedixwin. Hin kes jî bexdenûzê dikelînin û ava wê vedixwin.[534] Heger ev pêkanîn jî bi kêr neyên, vê carê berê xwe didin saziyên tenduristiyê. Li gorî pêşniyarên bijîşkan tevdigerin. Bijîşk dermanên çêkirî pêşniyar dikin yan jî bi rêbaza ameliyat û hwd. nexweşan nojdar dikin. Hin caran jî ji kesên din gurçikan neqlî nexweşan dikin.

---

527 Jêder: 12, 47, 50, 51, 79, 83, 96.
528 Jêder: 48.
529 Jêder: 36.
530 Jêder: 21, 24, 25, 30.
531 Jêder: 39.
532 Jêder: 40.
533 Jêder: 115, 116, 117, 145, 148, 149.
534 Münire Baysan, *"Kütahya ve Yakın çevresinde Halk Hekimliği ile Ocak Kültü"*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Uludağ Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Bursa 2016.

## Kunîr

Ew nexweşî li ser çermê mirovan peyda dibe. Di ser ve wekî pizrikekê xuya dike. Lêbelê ji bin ve hişk û kûr e. Piranî di bin çene, binçeng û kulîmekan de dertê. Heger diranê kesekî/ê riziya be, di xwîna wî/ê de mîqrob hebe yan jî demeke dirêj li ser tiştekî hişk rûniştibe kunîr li bedena mirov xwe dide der. Êşa wê berê ne pir e. Lêbelê her ku kul mezin dibe êşa wê jî zêdetir dibe.[535] Sedema wê nexweşiyê baş nayê zanîn lêbelê bi qasî ku jêder dibêjin, ev nexweşî û pîsitiya nava mirov bi vî awayî xwe dide der. Dermanê wê jî şêranî ye.[536]

> "Kunîr, dermanê xa loqim e, ya jî pelok e. Hema gerek ser va nequrçikînin. Aman ha derziyê nêzikî nekin."[537]

Wisa tê bawerkirin ku taybetiya vê nexweşiyê ew e ku divê derzî nêzîkî kulê nebe. Ango bi tu awayî tiştên birek û hesin nêzîkî kunîrê nebin. Divê bi tiştên şêrîn ên wekî loqim, hêjîrên hişk, mewîjên kutayî û hwd. ev kunîr bê nermkirin heta ku kêma nava wê were der kul di cihê xwe de bivemire.[538]

## Dînbûn (Ba-Dînîtî)

Li Anadolê gava ku nexweşîna bayê[539] (dînîtî-dînbûnê) li nexweşxaneyan neyê dermankirin, gel serî li kevneşopiyên berê dide. Ew jî serdana ocax, cih û warên pîroz e. Ev kevneşopiya ku xwedî rê û rêbazine dewlemend in xwe dispêre telqîn û baweriyê. Mirov dikare bibêje xwedî karaktereke dermankirina derûnî-zanistî ye.[540]

535 Jêder: 58, 70, 76, 100, 106.

536 Jêder: 25, 40, 47, 50.

537 Jêder: 47.

538 Jêder: 41, 47, 50, 61, 74, 79.

539 Têgeha "ba" ji bilî wateya xwe ya rastîn, li herêma Semsûr û Rihayê ji bo cureyekî nexweşîna hişî/aqlî û nexweşîna romatîzmayê (şewata jinûyan) jî tê bikaranîn.

540 Tevfika Tunaboylu-İkiz, "Türk Psikiyatri Tarihi ve Psikanalizin Yeri", *Psikoloji Çalışmaları Dergisi*, 1999; 21, 162.

Di çanda gelêrî ya Semsûrê de, ba û dînîtî wekî du nexweşînên cuda têne pejirandin: Dînîtî bi piranî wekî rewşeke zikmakî, rewşeke rihî ya mayînde tê zanîn. Ba, wekî rewşeke derûnî-rihî demborî (kêm caran jî mayînde) tê binavkirin. Di nav gel de, dînbûn li gorî rêje û taybetiyên xwe bi navên cuda tê penasekirin; wekî cinlêxistin, aqilwindakirin, aqilavêtin, aqilçeliqandî, hişkêmî û hwd. Heger nexweş ji makzayiyê ve ji aliyê aqil ve yekser astengdar be ji wî/ê re *"dîn"* dibêjin. Heger kes, ji aliyê aqil û fêmkirinê ve kêm be, *"heşkêm/hişkêm"* dibêjin. Heger dînîtî, tenê wekî serhişkiyeke dijwar xwe diyar bike, ji wî/ê kesî/ê re dibêjin *"kirkirrî"*[541]. Heger mirov, piştî temenekî ji ber rewşeke derasayî (ji ber evîneke mezin, bobelat, qeza, tirs û xofeke mezin û hwd.) aqlê xwe wenda kiribe ji wan kesan re *"diwane"* dibêjin.[542]

> "Hen, ê bere dîn in; yanê makzayî da. Ê wana -Xadê yardim ke- zor e; heta mirinê ê hung win. Hen jî paşê dîn diwin. Ya ditirsin, ya dilî xa dikin hena, ya jî qeziyak, belak tê serî wan. Bi ser da dîn diwin. Diwin ber êrika, ziyareta... Heni xa xaş diwin, mîna berê; heni xa jî niva diwin dîwane, bi çolê dikevin. Bihat bi bihat dîn hene: ê ki xeta top dikin; ê ki paça dicûn, ê ki kinca li ser xa diqetînin... Xadê yardim ke; ê zor e."[543]

Dînbûn, dibe ku ji ber bûyereke tirsnak, mirina xizmekî/ê, evîndarî hwd. çêbûbe. Dînbûna ji ber van rewşan jî car heye dînbûneke demborî ye.[544] Her kesê/a dîn xwediyê hin taybetiyan e. Hin ji wan kaxizan berhev dikin; hin ji wan ji mirovan ditirsin, ji hundirê malê dernakevin. Hin ji wan bê cih û war in; li derve di nav xwezayê de dijîn. Hin ji wan ji her kesî tiştan (pere, cil û berg, cixare û hwd.) dixwazin.[545]

---

541 Ev têgeh, di wateya rastî de ji bo sewalên wekî ker, bergîr û hêştiran ku bi ceh têne xwedîkirin tê bikaranîn. Bi wateya mecazî, ji bo kesên serhişk ku bi tu awayî peyv di serî de naçin, tê bikaranîn

542 Jêder: 7, 13, 30, 69, 96.

543 Jêder: 117.

544 Jêder: 22, 70, 73, 46.

545 Jêder: 1, 8, 9, 10, 18, 31, 60, 65, 71.

Di her du rewşan de jî (çi demborî çi jî mayînde) pêkanînên bijîşkiya gelêrî bi sînor in û hemû rêbaz xwe dispêrin baweriyê. Hin ji wan rêbaz û hewldanên çareserkirina nexweşîna ba û dînbûnê weha ne:

- Ji bo kesê/a nexweş li ba şêx û melayan nivişt tên çêkirin; qederekê li cem Şêx an jî Dede tên sekinandin. Heke bivê tên girêdan.[546]

- Nexweş, dibin ser êrik, tirbe û ziyaretan. Şevekê du şevan li wir radizên. Ev pêkanîn car caran sê êvarên îniyê li pey hev tê dubarekirin. Xizmên nexweş, ji bo wî/ê dia dikin, loqmeyan belav dikin. Perçekî potikê kesk ên tirbeyan an dixin bêrîka nexweş an jî bi bendika wî/ê vedikin. Axa hewşa ziyaret an jî tirbeyê dixin nav avê û didin nexweş û ji wê avê hinekî li ser çavê nexweş dikin. Wek mînak, li Semsûrê, zarokên ku nerihetiyên wan ên derûnî yan jî rihî hebin, wan dibin ser Bîra Tewixanê, ku li kuçeya 1420an a Taxa Mûsallayê ye, li wir bi ava bîrê dest û serçavên zarok tên şûştin û ji wê avê hinekî didin zarok. Tê bawerkirin ku bi vî awayî wê zarok bi aqil bin.[547]

- Kesên ku aqilê wan ne li serê wan in dibin ber tirbeya Şêx Evdirehmanê Erzinganî ya li gundê Zagê.[548] Car caran jî wan dibin ber tirbeya Hecî Ûsiv (Yûsif). Li wir şevekê derbas dikin, dia û lava ji Xwedê dikin. Tê bawerkirin ku ev zat (Hecî Ûsiv), di dema ku sax bûye bi bi cinan re peyiviye, ji zimanê wan fêm kiriye. Wê nehiştiye ku cin xisarê bidin mirovan. Li gorî baweriya gel, kesên wisa xwedî keramet, piştî mirina wan jî bandora kerametên wan didome. Ew zatên pîroz, bi behremendî û qebîliyeta xwe nexweşan baş dikin.[549]

- Nexweşan dibin cem kesên ku nistiyan çêdikin û bi cinan re xeber didin. Nexweş, li wir gotin û tevgera wan dubare dike. Wisa tê bawerkirin ku bi xêra dia û nistiyên wan kesan dê bayê

546 Jêder: 1, 3, 6, 16, 20, 142, 146, 150.

547 Jêder: 17, 35, 41, 49, 60, 68, 92, 107, 129, 144, 151, 163.

548 Gund bi navê "Zey" jî tê naskirin. Di nivîsên fermî de jî wekî "Îndere" derbas dibe.

549 Jêder: 64, 71, 76, 86, 103, 128, 141.

ser nexweşan dê bê avêtin. Dînîtî dê ji holê rabe.[550]

Heger dînbûnî piştî bûyerekê çêbûbe tê bawerkirin ku dînbûnî demborî ye. Lewma hewl didin ku sedema nexweşînê ji holê rakin:

- Heger dînbûnî ji ber tirsê çêbûbe doza alîkariyê li ocaxan tê kirin. Kesên biocax tirsa wan vedigrin û bi vî awayî tirs ji ser wî/ê kesî/ê tê avêtin.[551]

- Heger piştî mirina xizmekî ba hatibe kesê nexweş, telqîn lê tê kirin. Car caran rewşa ku bûye sedema tirse tê dubarekirin da ku nexweş bi pirsgirêkê re rû bi rû bimîne û zora pirsgirêkê bibe. Wisa tê bawerkirin ku piştî van pêkanînan ba û gelek nerihetiyên din ên derûnî baş bûne.[552]

- Ba ango rewşa dînbûnê li gorî çanda civakan diguhere. Kesekî/e ku li gorî çandekê wekî dîn tê hesibandin dibe ku di nav çandeke din de wekî dîn neyê hesibandin. Li gorî baweriyan rêbazên dermankirinê jî diguherin: Di hin civakan de têkiliya civakê û dînan gelekî tund e. Lê di hin civakan de civak û dîn di nav têkiliyeke germ de ne. Li gorî vê pîvanê ew kesê/a ku wekî "dîn" tê hesibandin di rastiyê de dibe ku ne dîn be. Nexweşiyeke wî/ê ya bi pêdiviya dermankirinê tunebe. Dibe ku di warê nêrîn, tevger û hişmendiya civakê de pirsgirêk hebe.[553]

Ba û dînîtî pirsgirêkeke gerdûnî ye. Wek mînak, li welatên Ewropa ji sedsala 16an heta sedsala 19an ji bo çareserkirina nexweşiya dînbûnê çend rêbaz hatine ceribandin:

- Ji lingan dest pê dikin heta serî bardaxan (hicam/hecamat) li laşê li nexweş dixin.

- Serê nexweş rût dikin û serê wî/ê girê didin. Hinek sîrke li nav ava sar dixin û bi paçikekî serê nexweş şil dikin. Hewl didin ku serî tim hênik û şil bimîne.

---

550 Jêder: 25, 41, 66, 67, 80, 93, 100, 115.

551 Jêder: 1, 4, 16, 18, 19, 20.

552 Jêder: 5, 6, 38, 103, 104, 115.

553 Mahmut Tezcan, *Kültür ve Kişilik (psikoloji-Antropoloji).* Bilim Kitap Kırtasiye, Ankara 1987. r. 23.
Li herêma Semsûrê li ser dînan gelek gotinên pêşiyan hene: Wekî, "Dînî ku bikene xweş nabe.", "Bi çel bahetî (cure) dîn hene."

- Divê her gav ava sar bi nexweşan were vexwartin. Wisa tê bawerkirin ku dê nexweş bi vî awayî baş bibe.[554]

## Diranêş

Êşa diranan hem li nav zarokan hem jî li nav mezinan êşeke berbelav e û herkes di demeke jiyana xwe de bi vê pirsgirêkê re rû bi rû dimîne. Li welatê me gelek kes sûdê ji diranên xwe nabînin. Sedema vê yekê jî ew e ku diran bi rêk û pêk nayên şûştin, firçekirin; di dema pêwîst de nayên dermankirin. Piştre, gel neçar dimîne ku diranên xwe rake. Êşa diranan, hîn jî ji bo mezinan û zarokan pirsgirêkeke mezin e û ev nexweşîn dibe sedema kêmbûna qelîteya jiyana mirovan.[555] Ji berê heta niha kesên ku ji derfetên tiba nûjen nikarin sûdê werbigrin, gava diranê wan diêşe serî li dermanên Kurmancî/Kurdewarî didin.

> "Hewik xwê dikin nav avê û di devî xa werdidin."[556]
> "Qoloniyê ya jî mazotê di devî xa werdidin."[557]
> "Dûyî cixarê dikşinin û vêsikê di devî xa da dilin, paşê berdidin."[558]

Hin derman û pêkanînên dermanên Kurmancî yên li herêma Semsûrê weha ne:

Hinek xwê dixin nav avê û li hev dixin. Wê avşorkê çend caran li pey hev di devê xwe werdidin. Hin kes li gorî derfetan qolonyayê yan jî mazot dixin devê xwe û demekê di devê xwe de diçelqînin, piştre dirêjin. Hin kes jî dûyê cixareyê dixin devê xwe û demekê wisa dihêlin pişre berdidin. Wisa tê bawerkirin ku ev rêbaz êşa diranan kêm dikin.

Heger êş nesekine diçin bal hekîmên Kurmancî. Ew, diranê ku diêşe radikin.

---

554 Michel Foucault, Delliliğin Tarihi, çev. M. Ali Kılıçbay, İmge Kitabevi Yayınları, 4. Baskı, Ankara 2006, r. 779.

555 Saadet Gökalp ve ark., "Erişkin ve Yaşlılarda Ağız-Diş Sağlığı Profili Türkiye-2004", *Hacettepe Dişhekimliği Fakültesi Dergisi*, 2007; 31 (4): 17-18.

556 Jêder: 7.

557 Jêder: 91.

558 Jêder: 16.

"Şevekê ez bi êşa didana bi xa hesiyam. Min kir nekir êş nesikinî. E nizam çito li mi bû siwe. Ez siweda zû çûm gundî Malê Awî Ûsiv. Li wir êkî ku didana heldike hewû. Wî didanê min hel kir. Mi hewk av di devî xa werda û e hatim mal. Paşê ê din jî xira bûn. Ez çûm tixtor. Mi ra va taxima çêkir."[559]

Kesên ku êşa wan a diranan dûr û dirêj didome, diçin cem bijîşkên gelêrî yên diranan da ku diranê xwe rakin. Bijîşkê gelêrî, bi pense yan jî bi benekî papij diranan dikşîne. Ev diran bi piranî diranên şikestî an jî kurmî ne.[560]

Diranên şîrî heta piştî çêbûnê bi şeş mehan û pê ve derdikevin. Piranî, heta pênc saliya zarokan dest bi weşînê dikin û ji dewsa diranê weşiyayî diranên eslî dertên. Ew pêvajo heta 12-13 saliyê temam dibe. Gelek caran diranên şîrî bi xwe diweşin, lêbelê carinan berî ku biweşin demeke dirêj dileqin. Ew yek jî dibe sedema êş û aciziya zarokan. Di rewşên weha de, ferdekî malbatê berpirsyariya kişandina xwarik an jî diranên şîrî hildide ser xwe: Zarok bi hincetekê dixapîne, bi xamî ve diranê ku dileqe dikşîne û hildike. Piştî rakirinê, ew diran tê şûştin û dixin destê zarok. Zarok jî wî diranê xwe dixe bin balîva xwe. Gava zarok radikeve, bavê wî diçe, wî diranî derdixe û hinek pere datîne şûna wî.[561]

Li hin deveran ji bo siûda baş, diranê ku hatiye kişandin didin dest zarok. Zarok dertê ber deriyê hewşê. Xwe pêş de xûz dike û diranê di destê xwe di bin şeqên xwe, heta jê tê, bi paş ve davêje. Dibêje,*"Bila ev here, êkî zêrîn li şûna wî were"*. Wisa tê bawerkirin ku piştî vê pêkanînê, diranê ku derkeve dê xweşik û qewî be.[562]

Heta çend sal berî niha, li herêma Semsûrê û Rihayê pîşeya çêkirina diranan -bi taybetî jî yên zêrinî- wekî kevneşopiyekê di destê qereçiyan de bû. Bihar û havînan qereçiyên ji bajarên derdorê dihatin gundên Semsûrê. Jinan karê parsa zad, rûn,

559 Jêder: 135.
560 Jêder: 7, 11, 18, 90, 91, 117.
561 Jêder: 1, 2, 3, 8, 17, 18, 23, 38, 49.
562 Jêder: 19, 32, 33, 40, 51, 64, 90.

nan û hwd. dikirin. Mêran jî wekî pîşe, seradvanî, selikvanî, kirîn û firotina hespan û çêkirina diranên zêr û zîv dikirin. Kesên dixwestin diranên xwe çêbikin diçûn cem van qereçiyan û diranên xwe bi wan didan çêkirin.[563]

> "Berê qereçî dihatin nav gundan. Niha jî têne lê ew ê hoste niva nemane. Ku havînê dihatin nav gund, li ser wê çihamikê,[564] hendê malê me, konê xa vedikirin. Bêjing, serad û didanê zêrîn jî çêdikirin. Bi pera, bi gênim, bi bergîra... Ku çito li hev hatin."[565]

Wan hostayên diranan, li gorî bazarê û pêwîstiyê, diranek, komek yan hemû diran -wekî taxim- bi hev re çêdikirin. Hin ji wan kesên ku diranên xwe bi qereçiyan dane hîn jî li heyatê ne.[566]

- Li hin deveran jî ji bo ku êşa diranan rawestînin serî li nivîştên melayan didin. Mela li ser kaxizekê "ya Şem'ûn"[567] dinivîse. Kesê/a nexweş, wê kaxizê bi dîwarekî ango bi depekî (texte) ve dikute. Ji bo her roja ku êşa diranan didome li ser tîpekê bizmarekî dikute. Wisa tê bawerkirin ku dê wekî wî bizmarî êşa diranan jî raweste.[568]

- Heger demsal havîn be, şîrê kerikên hêjîran di ser diranê ku diêşe de ber didin. Bi vî hawî êşa diran ji bo gavekê be jî bi

---

563 Jêder: 19, 32, 75, 122, 164.

564 Çihamik: Mêrg. Peyveke herêmî ye. Bihar û zivistanê warê çêrê ye. Havînan jî wekî cihê bêndaran tê bikaranîn. Malê gundiyan yê hevpar e.

565 Jêder: 158.

566 Piştî ku mirov dimre, xizmên wî diranên çêkirî ji devê mirî derdixin, piştre li tenişta gorê dîsa dixin binê erdê. Li aliyên din, çîrokên dizê diranên zêrîn ku ji bo zêran goran vedikin jî herêmê bi nav û deng in.

567 **Şem'un**: Peyveke balkêş e. Li gorî ferhengan du wateyên vê peyvê hene: 1. Navê yek ji donzdeh hewariyên Îsa Pêxember e. 2. Navê yek ji pêxemberên ku tê gotin ji bo nijada Îsraîliyan hatiye şandin. Di vê mijarê de di serê me de hin pirs û guman hene. Gelo, haya wan melayan ji van wateyan heye yan na, ev kevneşopî ji kîjan çandê maye ji Kurdan re, taybetiya wan "Şem'ûn"an û bi êşa diranan çi ye, em nizanin.

568 Nuran Çetin, *Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi*, r. 52.

temamî dişkê.[569]

- Her weha dîsa li Semsûrê hin kes sîr û qurnefîlê di nav hev de dikutin û didin ser diranê xwe yê ku diêşe.[570]

## Qelişîna Dest û Lingan

Heger ne ji ber nexweşînên navxweyî yên wekî şekir be, dest û lingên mirovan piranî, zivistanê ji ber ava sar û hewaya sar; havînê jî ji ber xebata zêde û meşa bi pêxwasî çêdibe. Bi taybetî kesên ku di karên giran ên wekî çîmento, seyandin (sewax), mermer, fayans, lêkirina dîwaran û hwd. de dixebitin destên wan diqelişin; kesên ku li ser betonê, keviran û hwd. pêxwas dimeşin jî pahniya lingê wan diqelişe. Gel hewl dide ku dest û lingên xwe nerm bike û nerm bihêle. Ji ber vê yekê jî amûr û têkberên ku têne bikaranîn piraniya wan bi rûn in. Wekî şimaya hingûv û rûnê nivîşkê, rûnê qirêsê yê trektoran, rûnê zeytûnan û hwd. Lewra gel dizane ku rûn çermê mirov nerm dike. Di rewşên weha de li herêma Semsûrê çend pêkanîn bijîşkiya gelêrî weha ne:

- Berî ku dest û ling biqelişin, wekî tevdîr, hineyê çêdikin û di dest û lingên xwe didin. Li gorî cerebeya gel, tê gotin ku hine çermê nazik hişk dike.[571]

- Hin gihayên şûtik û bi girêz di nav avê de têne kelandin û bi ava wan dest û ling tên dişûştin.[572]

> "Ji bo qelişîna dest û ningan "şimarûn" çêdikirin. Hêngiv diparzandin, şima dima. Hewik rûnê malê jî tevlê dikirin û mist didan. Êvarê bi dest û ningê xa didan."[573]

- Şimaya hingûv û hinek rûnê nivîşkî li hev dixin û li devera qelişî didin.

569 Jêder: 149, 155, 159.
570 Jêder: 131, 132, 137, 138.
571 Jêder: 3, 12, 20.
572 Jêder: 14, 18, 41.
573 Jêder: 16.

"Sewê ku qelişîna desta, qirîs (gres) yaxi tê didan. Li cem malên ku motora xa ya cot heye dihat dînê."[574]
"Naylon dikirin dest û ningên xa û heta siweda girêdidan. Wan xwi dida û hewkê nerm diwûn."[575]
"Vê paşiyê diçûn melem dikiriyan, dianîn tê didan."[576]

- Xwediyên motorên cot, rûnê grêsê ji bo kêmkirina qelşên destan û lingan bi kar tînin.
- Hin kes jî şemedanan (naylon), berî razanê li dest û lingên xwe dipêçin; heta sibehê wisa dihêlin. Dest xwîdan dide û hinekî nerm dibe.

Heger dest û ling ji sermayê û tahdeyê werin parastin, qelişîna wan di hundirê neh-deh rojan de derbas dibe. Lêbelê heger qelşa dest û lingê wan kûr be û neyê dermankirin demeke dirêj derbas nabin. Carinan wisa dibe ku ji ber şewata van qelişan mirov nikare razê. Tê fêmkirin ku piraniya van pêkanînan, ji bo nermbûna dest û lingan e. Heger qelişîna dest û lingan zû baş nebe, nexweş serî li saziyên fermî didin. Bijîşk, li gorî pêwîstiya nexweşiyê dermanan didin nexweşan.[577]

## Arê Şevê /Arî Cinan

Arê şevê/arî cinan, bi latînî "Herpes sîmpleks" yanî kula lêvan, ji 6 celebên wîrûsan çêdibe û têgeheke ku ji bo pênasekirina malbata wîrûsan tê bikaranîn. Piranî li derdora lêvan dertê lêbelê car caran jî li derdora deverên mahrem/şermê dertê.[578] Li van deverên mirovan bi piranî ji ber nexweşînên vegir, ava qirêj û xurekan kêm (îltihab-enfeksiyon) kom dibe. Ev kêm, tevlî xwînê dibe û belav dibe û dibe sedema sincirandina laş. Paşê, derdora dev û lêvan, çermê serî hwd. sor dibin. Taybetmendiya berbiçav a vê nexweşînê; sincirandina laş, xur û vegirîna wê ye.

574 Jêder: 8.
575 Jêder: 159.
576 Jêder: 48.
577 Jêder: 7, 9, 23, 30, 34, 41, 53.
578 *Enfeksiyonlardan Korunma*, Herpes Simpleks (Uçuk), 2017, r. 43.

Gava kul biteqe û ava wê belav bibe, dibe sedema nexweşînê.[579] Piştî ku kêm ango enfeksiyona/mîqroba nav laş dertê kul ziwa dibin û hêdî hêdî baş dibin. Piranî mirov serê sibehê hay ji van kulên biçûk çêdibin. Ji ber ku mirov bi şevê hay ji sincirandina laş nabin di nav Kurdan de wekî *Arî Şevê* ango *Arî Cinan* tê penasekirin.

Carinan ji ber hin derban, qirêj û gemarê ango mîqroban li bedena mirov kulên piçûk wekî pizrikan didin der. Taybetiya van kulan ew e ku zû belav dibin. Heçî kesê/a ku destê xwe pê bike, kincên kesê/a nexweş li xwe bike nexweşîn digihêje wan. Piranî di nav zarokan de tê dîtin. Lewra zarok ji mezinan bêtir xwe gemarî dikin û li paqijiya laşê xwe miqate nabin. Arê şevê ji nav por, ser û çavan dest pê dike. Berê di nav porê serî de xuya dikin. Di nava du sê rojan de nexweşîn li her devera laşê mirov belav dibe. Yek ji taybetiya arê şevê ew e ku serê wan pizrikan zer dibe û tim dixurin. Her ku pizrik, tên xurandin, diteqin û li laş belav dibin. Pizrikên ku teqiyane tevî xwîn û kêma xerab ziwa dibin, qaşil digrin. Piştî demekê şopa wan pizrikan wenda dibe.[580]

Malbata zarokê/a ku bi arê şevê/arî cinan ketiye, ji bo çareseriyê serî li hekîmên Kurmancî dide. Hekîm jî hin dermanan çêdikin û ji nexweş dixwazin ku parêzê bigre, heta ku ew kul vemirîne. Piranî dermanên ziwa yên wekî tozê têne bikaranîn.

- Dendikên mişmişan an jî maziyên daran tevî qalikan dişewitînin, di coniyan de dikutin û wekî tozê direşînin ser pizrikan.[581]

- Ariya êzingan di bêjingê yan jî parzûnekî re dipên/diparzûnîn û rojê du caran direşînin ser pizrikan.[582]

- Carinan jî hinek rûnê nivîşkê tevlî wê tozê dikin û wekî melhem di serê pizrikan didin. Heta ku pizrik ziwa bûne û vemirîne çend rojan sibehê û êvarê (berî razanê) ev derman tê bikaranîn.

579 "Dudak Uçuğu", https://gskpro.com/tr-tr/tedavi-alanlari/tr/dermatoloji/dudak-ucugu/ (22.12.2018).

580 Jêder: 1, 4, 26, 30, 31, 58, 72, 81, 82, 90.

581 Jêder: 19.

582 Jêder: 8.

- Wekî parêzê, divê heta ku nexweşîn derbas bibe, di serî de pîreşk (fatereşik), goşt û xwarinên bi rûn neyên xwarin.

"Arî şeve, kul e. Zêde diwe, belaw diwe. Dermanekî zer di nav serê nexweşan didan. Dendikên mişmişa peva dar û dendika dişewitandin; dihêran, dikirin nav rûnî manga û tê didan. Bi şevê şewatê xa zêde diwû. Arî şevê dixure, pir î pîs e. Serê meriya kermik digre. Îlam jî gerek merî pîreşika dewêr nexwe."[583] "Arî şevê kul e, av digre, mîna rûn diçilke. Li Omeran mala Eyzî Millê derman dikin."[584]

Li gundê Qirxliya Reşik, kesên ku zarokên wan bi arî cinan (arê şevê) dikevin serî li hekîma Kurmancî, Qudê (Qudret Kapıcı) didin. Ew jî nistiyekê li dar dixe. Qirş û qalê heft malan -ku di her malekê de bi navê "Mihemed" kesek heye- berhev dike; sêleke kevin tîne; berovajî dike. Ew qirş û qalê ku berhev kiriye li ser sêlê dişewitîne. Di dema şewitandina qirşikan de zarok li dora wî agirî digerin û stranan dibêjin. Ew lîstik jî beşek ji vê nistiyê ye. Piştre, ariya ku çêbûye sar dike, di parzûnekî yan jî bêjingekê re derbas dike, dipê. Hinek şîr an jî av tevlî wê ariya paqij dike, distrê. Wekî melhemekê amade dike. Heta ku kul vemirîne wê melhemê di kulan dide. Hekîma Kurmancî Qudê, vê pêkanîna xwe weha vedibêje:

"Arê şevê, berê pir bû. Pizik li ser çava dihatin. Mi hurik (qirş û qal)ê heft Mehemedan top dikir, li ser sêlê dişewitand. Berê "Mehemed" pir bûn. Kurikan li dor êr ra dilîstin. Ku kurik di dor ra nelîzin, nistî qewûl nawe. Xaliya ku çêbûye mi dibêt; hewik şîr ya jî av tevlê dikir; di wan pizika dida. Heta ku rehet diwûn... Şîr, î rind e."[585]

Li gundê Hesenkan "Ocaxê arî şevê" heye. Mala Alî Algirê tûyê dikin. Wekî din jî dermanê wê çêdikin:

- Remtûtikê[586], teniya rojînê û mîza zarokan li hev dixin û di

583 Jêder: 15.
584 Jêder: 6.
585 Jêder: 23.
586 **Remtûtik:** Cureyekî dara tuya ye, çêja wan miz e. Li hin herêman wekî

kulê didin. Heta ku baş bûye. Di vê navberê de sabûnê nêzîkî kulan nadin, serê zarok naşon.[587]

Li gundê Narînceyê jî qirş û qalên derdora heft malên navê zarokekî wan "Miheme(d)" e tên berhevkirin. Paşê agir tê vêxistin û sêleke datînin ser vî agirî. Li ser vê sêlê, ji arvanê genim *"kilor"*[588] tên çêkirin û li zarokan tên belavkirin. Tê bawerkirin ku nexweşîn bi vî awayî baş dibe.[589]

Di vê pêkanînê de pîrozkirina agir balê dikişîne. Ji Zerdeştiyê heta Êzdiyatiyê, di gelek bîr û baweriyan de roj û agir heyberine pîroz in. Li gorî baweriya Zerdeştiyê, Mîthra xwedaya edaletê ye û hikmê wê li ser agir heye. Di birêvebirina gerdûnê de roleke wê ya girîng heye. Lewma divê agir bê temaşekirin û neyê tefandin.[590] Dîsa di heman pêkanînê de, berhevkirina qirş û qal de şertê ku di malê de bi navê "Miheme(d)" bala mirov dikşîne. Lewra navê *"Miheme(d)"*, îşaret bi girêdana gelê herêmê ya bi ola Îslamê û Hz. Mihemed dike. Her weha gava zarok li dor agir diçin û tên distrên û ev jî ayînên kevn ên derbarê agirperestî û agir de tîne bîra mirov. Ji van mînakan jî dixuyê ku gelek pêkanînên bijîşkiya gelêrî xwedî paşperdeyeke dînî û entîke ne.

Di demên dawî de, derbarê nojdariya bi nebatan de hin pirtûk hatine çapkirin û di van pirtûkan de ji bo başkirina arî şevê ava lîmonan, kelandina pelên hinarê, sîr û şeb tên pêşniyazkirin.[591] Lêbelê divê neyê jibîrkirin ku ev pêkanîn tenê pêşniyaz in, tu aliyê wan ê zanistî nîne, her wekî pêkanînên din ên herêmî.

---

"tûyên şêmî" ji têne binavkirin.

587 Jêder: 38.

588 **Kilor:** Peyveke herêmî ye. Cureyekî nanê sêlê ye. Hevîr bi qasî bihost û nîvekê wekî giloverekê tê pahnkirin û li ser sêlê tê pijandin. Nanê sêlê tenik û mezin e lê kilor piçûk û sitûr in.

589 Jêder: 41, 128, 140.

590 Pîr Memo Osman, "Felsefeya Ola Êzidiyan û Koka Wê", *Bîr Araştırma ve İnceleme Dergisi*, 2005; 2: r. 111.

591 Mustafa Aydıner, Şifalı Bitkiler Ansiklopedisi, 5. Baskı, Metropol Yayınları, İstanbul 2014, r. 145.

## Bayê Zik

Di dema zarokatiyê de yek ji pirsgirêkên mezin jî bayê zik (gaz) e. Bayê zik, piranî piştî sê hefteyên zarokan diqedin dest pê dike û heta salekê jî dem bi dem çêdibe. Zarokên ku ji ber bayê zik, êşa (sancû/buxrî) wan çêdibin tim digirîn. Tê gotin ku sedema sereke ya bayê zikê zarokan, xurekên ku dê dixwe bi xwe ne. Nexasim jî gava dê berên wekî pîvaz, kelem, nok, nîsk û hwd. dixwin, madeyên bayî yê di van xurekan de tev li şîrê dê dibin û gava zarok vî şîrî dixwe dibe sedema buxriyan.[592]

Sedemeke din, di dema şîrdayînê de pozîsyona mijandina zaroka ye. Gava zarok di pozîsyoneke çewt de bê mijandin, bi şîr re hinek hewa jî dadiqurtîne, ew jî rê li ber bayê zik vedike.[593]

Li gorî hevpeyvînên ku hatine kirin, sedema pêşî ya bayê zikê zarokan, xwarinên dayikê ne. Ba, bi wan xurekên ku dayik dixwe re tevlî şîr dibe. Ew şîrê ku piştî van xwarinan bi dayikê re çêdibe jî bi ba ye. Dema ku zarok şîr dixwe bi wî/wê re jî ba (gaz-sanci-buxrî) çêdibe. Bayê zik, zarokan pir aciz dike. Ji ber vê yekê jî şev û roj digirîn. Dayik ji bo ku li ber vê êşê bigrin xwarinên ku bayê çêdikin naxwin. Li gorî bawerî û zanîna gel, dims, çîr (mişmişên hişk), xoşav û hwd. bayê çênakin û alîkariya helandina xwarinan dikin. Dayik û zarok bi wan naêşin. Her weha ji aliyê naverokê ve jî dewlemend in û şîrê dê zêde dikin.[594] Digel vê yekê jî divê bê zanîn ku her xwarin -hindik be jî- bayê çêdike.

Ji bo ku bayê zikê zarokan kêm bibe jin, ji bilî parêza xwarinan hin riwekên din jî wekî derman dixwin ango ava wan vedixwin. Carinan jî ji ava wan riwekan hinekê bi ser zarok ve dikin. Bi wan didin vexwartin. Di nav wan riwekan de yên herî pir têne bikaranîn talik, pûng û rîzang in. Taliyê hişk dikin, dipişêrin û hiltînin. Her ku pêdivî pê çêdibe hinekê dertînin,

---

592 Mehmet Yalaz, "İnfantil Kolik Tedavi Modellerinin İncelenmesi", *Turkiye Klinikleri J Pediatr Dergisi*, 2003; 12 (3), r. 206.

593 Penelope Ody, *Evde Şifalı Bitkilerle Tedavi*, Çiğdem Algün (Çev.), Arkadaş Yayınevi, Ankara 2009, r. 90.

594 Jêder: 50, 56, 59, 60, 95, 127.

hinek şîrê dayikê tevlê dikin. Piştre diparzûnîn û bi qasî du-sê dilopan dixin ser kevçiyê çayê bi zarok didin vexwartin.[595]

Li hin deveran, pûngê dikelînin û heta ku tîr be lihev dixin. Ku wekî pelûlê tîr bû, ji ser agir datînin û hinekî sar dikin. Li ser paçikekî pahn dikin û didin ser zikê zarokê/a ku zikê wî/ê diêşe. Demekê li ser dihêlin û radikin. Wisa tê bawerkirin ku pûng êşa bayê zik dibire:

> "Di wexta me da tihalî hûr dikirin, bi şîr li hev dixistin sewê sanciyê didan kurikan."[596]
> "Sewê ku zarok sanci neke hewik rûnî malê (nivîşk) germ dikirin û didan kurik."[597]
> "Me peloka pungê çêdikir, sewê ku sanciya kurikan here, me dida ser zikê wan."

Car caran jî hinek rûnê nivîşkê dixin devê zarokan. Wisa bawer dikin ku ew rûn gemara zikê zarokan paqij dike êşa bayê zikê wan derdixe.

> "Talik dikutan û hişk dikirin. Bi şîrê dê mist didin û di kitanê da diparzînin. Ev ava didan kurikan. Sewê ku gazê wan derkeve. Diyê kurikan jî kane vexwe. Lê wê çaxê jî şîrê dê ê tahl biwe. Ku tahl biwe, kurik niva şîrî dê venaxwe. Ew ê li şîr biqete. Diwe ku birçîna ra bimire."[598]

Niha, her çend bijîşk ji bo bayê zik hin niqres (dilop) û lavmanan pêşniyaz dikin jî, lêbelê gel bêtir berê xwe dide dermanên nebatî. Loma bikaranîna dermanên nebatî berbelavtir e.

### Lalbûna Demkî ya Zarokan

Hin zarok hene ku dereng diaxivin. Wê gavê dê û bavê wan, serî li nexweşxaneyan didin. Heger encam neguhere serî li bijîşkiya gelêrî didin. Zarokan dibin ber ziyaretan. Kîjan êrik û ziyaret nêzîk be, dibin wir. Li wir, mifteya deriyê ziyaretê dixin

595 Jêder: 143, 161, 162.
596 Jêder: 161.
597 Jêder: 30.
598 Jêder: 1.

devê zarok. Heger li wir kanî hebe, bi ava wê kaniyê serçavên zarok dişon. Hinekê jî bi zarok didin vexwartin.[599] Hin jî dibin mizgeftan û mifteya mizgeftan dixin devê zarokan. Nistiya wê ev e. Piştî ku zarok dest bi peyivînê kir loqmeyekî dikin û li ber wê ziyaretê belav dikin. Heger piştî pêkanîna bi mifteya mizgeftê be, amûrekê (xalîçeyekê, şalikekê û hwd.) dibexşînin mizgeftê.[600] Li hin gundan jî dema ku sewalek tê serjêkirin, zimanê wî dipêjînin û didin zarokê ku napeyive. Dibêjin, *"Bira[601] ziman bixwe ku bi ziman biwe."*[602]

Ku zarok ji makzayî ve ne lal be, jixwe piştî demekê dest bi peyivînê dike. Lêbelê di vir de ya girîng bawerî ye. Ew bawerî, derûniya zarok û malbatê baş dike.

Hin caran jî ji ber tirsekê, xemekê yan bûyereke sosret zimanê zarokan pûç dibe, nagere. Zarok dikin nakin nikarin bipeyivin. Di rewşên weha de malbat serî li rêbaza "vegirtina tirsê" didin. Her weha, avê pê didin vexwartin, tirsa wî/ê vedigrin, guleyê bi ser de dihelînin, pîvaz û xwê di dora serê wî/ê re digerînin û piştre diavêjin nav agir û hwd. Piştî demeke kin zarok vedigere rewşa xwe ya asayî, dîsa dipeyive.[603]

Pêkanînên bi vî rengî li herêmên din jî hene. Wek mînak, li navçeya Amedê, Bismilê jî zarokên ji dema makzayiyê ve nikarin xeber bidin, *"parîkê mala mîr"* didin wan. Malbata zarok diçe gundê Bismilê mala mîr (Şêxên Erebkendê). Mîr nan tîne. Gava mîr nan dibe ber devê xwe, malbata zarok dest diavêje wî nanî û dibêje, *"Ev parîkê me ye"* û ji nav destê mîr derdixe. Wî parîkî bi xwe re dibe malê û dide zarokê bêziman. Dibêjin gava zarok wî nanî dixwe piştî demekê bi ziman dibe.[604] Li navenda Amedê, avê di baskê pirçmêskan (şevşevok) de bi zarok didin vexwartin. Wisa tê bawerkirin ku dê bi vî awayî zimanê zarok vebe.[605]

599 Jêder: 4, 11, 12, 21, 41, 46.

600 Jêder 60, 62, 76, 84, 85, 89, 107.

601 Wekî taybetiyeke devoka kurmanciya Semsûrê, di gelek peyvan de ji şûna tîpa "l" û tîpa "r" tê bikaranîn.

602 Jêder: 20, 140, 143.

603 Jêder: 1, 5, 11, 33, 60, 62, 76, 84, 85, 89, 107, 140, 143, 150, 164.

604 Jêder: 165.

605 Kızıl, *Diyarbakır ve Çevresindeki Dini Anlayışta Mitolojik Unsurların Et-*

**Navketin**

Li herêma Semsûrê yek ji nexweşiyên girîng navketin e. Di tiba nûjen de gelek bijîşk bi vê nexweşiyê nizanin û nikarin vê nexweşiyê çareser bikin. Bi qasî ku kesên navsere û xwedî tecrûbe dibêjin, sedema navketinê ya sereke ji nişka ve rakirina tiştekî giran e. Piştî navketinê bi demeke kin, av dikeve dewsa navikê. Çavên mirov tarî dibin, nikare xwarinê bixwe. Canê mirov diricife. Dilê mirov li hev dikeve. Di rewşeke asayî de dema ku mirov tiliya xwe bide ser navika xwe, damarên bin navika mirov wekî dilê meriv hildavêjin. Lêbelê ku nava mirov ketibe, ew damar ne li navenda navikê lê li derdora wê -piranî li aliyê jêr- bi qasi 3-4 santîman dûr hildavêje. Heger pirsgirêk neyê çareserkirin mirov ji taqetan dikeve û dibe ku rê li ber nexweşiyên din jî vebe.[606] Ji bo çareseriyê serî li hekîmên Kurmancî yên ku bi navê dizanin û navikê dixin cih didin. Piraniya wan hekîman jin in:

> "Jinên ku bi navê zanin hene. Merî bi zikê birçî dihere cem wan jinan. Jinik meriya li ser piştê dirêj dike û navika meriya pas dike. Destî xa dide ser zikî meriya û mist dide, mist dide, mist dide û ber vi şûna berê def dike. Heta ku navik dikeve şûnê... Ku dikeve şûnê û şûnda, jinik diwê, *'De rawe ser xa.'* Te dî ku çavê te vewûn, heşê te hatin serî te. Ti fahm dikî ku ti pir birçî bûye. Merî heqdestikî didê û tê mal."[607]

Me di mijara navketinê de li gundê Hesenkan bi Zekîra Hezgirê û li navenda Semsûrê jî bi Bedriya Xaşikî re hevpeyvîn çêkir. Bedriya Xaşikî, rêbaza pêkanîna bicihkirina navikê bi kurtî weha vedibêje:

> "Ez (î/ê ku navik ketiye) li ser piştê dirêj dikim. Ez pêçiya xa didim ser navikê, def dikim û tînim dikim şûnê. Ku av ketibe şûnê, ez diwêm, 'Herin hewkê hereket bikin, bila ew ava bela

---

*kisi*, r. 195.

606 Jêder: 4, 9, 12, 20.

607 Jêder: 11.

biwe, hingê were.' Hewkê li ser xa digere û tê. Ez navikê tînim şûnê û wî dişînim."[608]

Li gundê Hesenkan û navenda Semsûrê, pêkanînên ji bo navketinê wekhev in:

Kesê/a ku nava wî ketibe, serê sibehê zû -bi zikê birçî- diçe mala hekîmê Kurmancî. Nexweş, xwe li ser piştê tê dirêj dike. Derdora navika xwe serpas (tazî) dike. Hekîm, tiliya xwe ya eşhedê/nîşanê li ser navikê û derdora wê digerîne, heta ku cihê ku navik lê hildavêje dibîne. Paşê ji xeynî tilî/pêçiya girikê, her çar tilî/pêçiyên xwe di ser navê re dibe tîne, didewisîne û ber bi cihê wê yê berê ve dahf/tahm dide. Bi vî awayî navikê dixe şûna wê ya berê. Heger di ser navketinê re wext derbas bûbe dibêjin, *"Av ketiye şûnê"*. Nexweş, radibe û hinekî li ser xwe digere. Paşê dîsa tê û xwe li ber hekîm, li ser piştê dirêj dike. Hekîm dîsa bi heman pêkanînê navikê tîne û dixe cihê wê. Piştî navik tê bicihkirin çavê nexweş vedibe, bi ser hişê xwe ve tê. Nexweş wekî destmiz hinekî pere yan jî tiştekî din dide bijîşkê gelêrî û diçe mala xwe. Wekî berê kar û barê xwe dike.[609]

### Bapêş /Şewb

Ji ber ku nîşaneyên her du nexweşîna dişibin hevdu, gel her du nexweşiyan gelek caran tevlihev dike. Her du jî nexweşînên vegir in. Hêjayî gotinê ye ku gelê herêmê, ji bo hemû nexweşîvên vegir, bi taybetî jî ji bo van her du nexweşînan hêmana "sitam"ê bi kar tîne. Digel ku gelek diyardeyên hevpar yên her du nexweşiyan dişibin hevdu jî di eslê xwe de ji hev cuda ne:

Bapêş, ji şewbê siviktir derbas dibe. Ji aliyê êşê ve ne pir giran e. Di her demsalê de xuya dibe. Di guherînên demsalan de bêtir zêde dibe. Demsala ku herî zêde xuya dibe payîz e. Her kesek salê carekê be jî bi bapêşê dikeve. Ji ber wîrûsên cihê çêdibe, bêyî ku were dermankirin heta deh rojan bi xwe wenda dibe. Kesê ku bi bapêşê dikeve hundirê pozê wî dişewite, li ser

608 Jêder: 20.
609 Jêder: 1, 2, 8, 11, 20.

hev dipişke; derdora çav û eniya wî/ê diêşe. Germa laşê kesê/a nexweş hinekî zêde dibe. Av bi bozê wî dikeve, taqeta wî kêm dibe û hinekî dikuxe.[610]

Şewb, bi navê xwe yê tibî grip jî piranî di serdema destpêka demsalan û zivistanê berbelav e. Nexweşîneke vegir e, bi rêya hewayê, destdanê (temasa bi her cureyî) û pişkînê belav dibe. Tê zanîn ku hin cureyên wîrûsan dibin sedema şewbê. Ji ber ku wîrûsa şewbê her sal xwe vediguherîne nojdariyeke teqez ya şewbê jî tuneye. Heger wîrûs nebe sedema nexweşînên din, çi bi derman çi jî bê derman di nav hefteyekê yan jî deh rojan de mirov xwe bi xwe baş dibe. Kesên ku bi şewbê dikevin hundirê pozê wan dişewite, li ser hevdu hildipişikin; çavên wan û derdora eniya wan diêşe. Paşê disincirin; av bi pozê wan dikeve û gelekî dikuxin. Taqeta laş kêm dibe. Bi taybetî rewşa tenduristiya kesên pîr û kêmtaqet dixe xetereyê. Carinan ew wîrûs dadikeve pişika nexweşan û heger neyê dermankirin dibe sedema mirina mirovan.[611]

Li Semsûrê ji bo sitama bapêş û şewbê hin dermanên Kurmancî/Kurdewarî weha ne:

- Nane, lîmon tên kelandin. Paşê hingûv tê tev lê kirin û vexwarin.
- Pûnga çolê ku demsala biharê de tê berhevkirin, wekî çayê dema wê tê girtin û paşê hingûv tê tevlêkirin û vexwarin.
- Qalikên hinaran ên ku di dema xwe de hatine hişkkirin, tên kelandin û ava wê tê vexwarin.
- Çaya çiyê tê demkirin û vexwarin.
- Çaya beybûnan/çîçekmastan tê demkirin û vexwarin.
- Tiştên şêrîn ên wekî dims, hêjîr, mewîj hwd. tên xwarin.
- Celebên şorbeyan tên vexwarin.[612]
- Wisa tê bawerkirin ku nexweş xwêdan bide dê baş bibe. Loma jî hewl didin ku nexweş xwêdan bide. Ji bo yeke jî kesê/a

610 "Saglik-Rehberleri, Soguk-Alginligi-Nezle", www.memorial.com.tr, (01, 11, 2018).

611 Selma Tosun, "Grip (Influenza) Nedir, Ne Değildir?", www.izmirtabip.org.tr - info@izmirtabip.org.tr (11.12.2020).

612 Jêder: 1, 4, 5, 8, 15, 20, 29.

nexweş dibin hemamê yan jî bi ava germ serê nexweş tê şûştin. Gava nexweş dikeve nav ciya ser wî/ê bi betanî û lihêfan tê nixumandin.[613]

- Hin kes jî bi ava cemidî/sar serê xwe dişon. Ev pêkanîn bi feraseta *"zor gizêrê radike"* tê kirin. Bi saya vê pêkanînê sincirandina laşê nexweş kêm dibe.[614]

> "Avşorkê çêdikin û di pozî xa werdidin."[615]
> "Gezgezkê dikelînin, hêngiv tevê dikin û vedixwin."[616]

Tê zanîn ku gezgezik ji bo başkirina temre, balûk, zerik û heta ji bo penceşêrê jî tê bikaranîn. Di hin nexweşînan de tenê ava wê tê bikaranîn, di hin nexweşînan de jî pel, toz û fêkiyên wê tevî hin nebatên din tên kirin.[617] Kesên ku bi şewbê dikevin jî gezgezkê dikelînin û tevî hinek hingûv ava wê vedixwin. Hin kes jî ji bo ku herikîn û şewata nav bêvila wan kêm bibe avşorkê çêdikin û rojê çend caran di pozê xwe werdidin.[618]

Li gelek deverên Anadolê ji bo sermagirtinê û bapêşê, ligel van pêkanînên ku li jor hatine rêzkirin hine jî tê bikaranîn. Hine bi çaya beybûna tê nermkirin û paşê tevî hinek şeb, qurnefîl û qerebîberê tê sitirandin. Ev hine, li serî tê dayîn û herî kêm saetekê tê rawestin. Piştre, serî tê şûştin û ziwakirin.[619]

Di demên dawî de, di warê bikaranîna dermanên bijîşkî de di nav gel de hişmendiyek çêbûye. Her weha li ser vê mijarê di televîzyonan de gelek bername tên çêkirin.

Ruhi Ersoy, di berhema xwe de destnîşan dike ku ev rewşa ku bi têgehên nûjen ên wekî "tiba alternatif", "tiba temamker" berbelav bûne, helwesta postmodernîzmê ya li hember moder-

613 Jêder: 16, 20, 142, 146, 150.
614 Jêder: 10, 24.
615 Jêder: 45.
616 Jêder: 72.
617 Aydıner, Şifalı Bitkiler Ansiklopedisi, r. 236-237.
618 Jêder: 52, 53, 72, 90, 110.
619 Ayşegül Demirhan Erdemir, "Kına'nın Türk Tıbbi Folklorundaki Yeri", *III. Milletlerarası Türk Folklor Kongresi Bildirileri, IV. Cilt, Gelenek, Görenek, İnançlar*, Başbakanlık Basımevi, Ankara 1987, r. 155-159.

nîzmê ye. Lewma jî divê firotina têkberên riwekan wekî asteke nû ya pîşesaziyê bê nirxandin. Ersoy, hişyariyekê dide û dibêje: "Mixabin, bijîşkiya gelêrî jî êdî li gor pîvanên kapîtalîzmê tev digere."[620]

## Rolêketin

Rolêketin, tabloyeke klînîkî yan xerabûna hefsengiya (dengeya) pergala sazûmankerê germa laşê mirov ya ji ber zêdemayîna li ber tavê ye.[621] Li herêma Başûr û Başûrrojavayê Anadolê, tîna tava havînê gelekî bi bandor e. Dema ku mirov neelimandiyê ber vê tavê be û bi carekê ve demeke dirêj li ber tava bitîn raweste, roj li meriv dixe. Bi lêxistina tîrêjên tavê yên tûj re, hevsengiya laşê mirov serûbin dibe. Kesên rolêxistî vedirişin, gêja wan diçe, zikê wan diêşe, bêhal dikevin. Heger cihê tavê lêxistiye nazik be, ew der dişewite û sor dibe.[622]

Kesên ku bi vê rewşê dizanin tevdîrên xwe di pêş de digrin. Berî ku derkevin ber tavê cilên sitûr li xwe dikin, kum û kolosan an jî şebqeyan didin serê xwe. Hin kesên ku sîwanê bi kar tînin jî hene. Bi taybetî jî kesên wekî, cotar, gundî, şivan û gavan li dijî rolêxistinê ji bo ku xwe biparêzin di germa havînê de saqoyan li xwe dikin.[623]

> "Ew çeket û tîrkoyên ku êk meri di germê havînê da li xa dikin ne li boşê ye. Îlla jî gavan û şivan, cotaran li çav xa ra bike, tê biwûnî."[624]

Li herêma Semsûrê, ji bo vê serdema tava tûj têgeha *"rogerm"*ê tê bikaranîn. Rogerm, digel ku li gorî herêman diguhere, kêm zêde di derdora saet dehan de dest pê dike û piştî nîvro

---

620 Ruhi Ersoy, "Modernizm-Postmodernizm Bağlamında Geleneksel Tıp Uygulamalarının Güncelliği Üzerine Bir Değerlendirme", *Milli Folklor*, 2014;26(101), r. 192.

621 Mustafa Ertuğrul, Özlem kaplan, "Güneş Çarpması ve Tedavisi", https://www.memorial.com.tr/saglik-rehberleri/gunes-carpmasi/ (10.09.2018).

622 Jêder: 13,23, 30, 45.

623 Jêder: 5, 19, 75, 89, 141, 149.

624 Jêder: 24.

heta derdora saet siseyan didome.[625] Li herêmên germ, heta ji destê gel bê, di dema rogermê de dernakeve derve. Gel, jiyana xwe, kar û barên xwe li gorî vê rewşê saz dike. Gundî û karker ji bo ku li ber wê tava tûj nemînin serê sibehê zû dest bi xebatê dikin. Rogermê navberê didin xebata xwe û di dema esrê de dîsa vedigerin ser karê xwe, heta ku dinya tarî bibe dixebitin.

Li herêma Semsûrê di rewşa rolêxistin û şewata ji ber tavê de pêkanînên sereke weha ne:

- Axa pirêzeya ceh, hîn ku rojê nedayê tînin, dikin herî û di devera ku rolêxistiye didin. Bi qasî saetek an jî duduyan li ser laş dimîne, piştre laş tê şûştin.[626]

-Merivê ku ro lêkeve bê hal dimîne, nav dihere, dilê wî/ê li hev dikeve. Dewê şor û hênik didin kesê/a rolêxistiye. Dew, gêja serî radiwestîne, tansiyona mirov radike û kerba mirov kêm dike. Bêhna mirov derdixe.[627]

- Bi ava sar serê nexweş dişon. Şewata laş ji ber tavê kêm dike. Mastê sar diparzînin û li ser paçikekî pahn dikin. Wî paçikî didin ser cihê ku royê lêxistiye û heta demekê (wekî nîv saet, saetek) li ser dihêlin. Car caran jî rast e rast mast li ser laş pahn dikin. Mast êşa şewatê kêm dike; laş hênik dike û bi vê yekê çermê mirov xwe nû dike.[628]

- Cihê ku tavê lêxistiye, bi heriyê diseyînin û demekê wisa dihêlin. Piştre laşê xwe bi ava sar dişon. Nexweş hinekî şêraniyê dixwin. Heta ku hinekî baş bibin dernakevin ber tavê.[629]

Li gorî lêkolînên ku hatine kirin, li Anadolê di xweparastin û dermankirina rolêxistinê de 29 cure riwekên wekî sêv, pûng, kizwan û hwd. têne bikaranîn.[630]

Niha li bajaran, li ber behran û hwd. mirov tevdîrên nûjen

---

625 Jêder: 7, 55, 63, 67, 74.

626 Jêder: 16, 21, 29, 42.

627 Jêder: 8, 13, 19, 22, 35, 46, 60, 65, 78, 96, 137, 151.

628 Jêder: 7, 23, 34, 46, 61, 80,83, 87, 98, 105, 115, 120.

629 Jêder: 1, 9, 15, 18, 25, 42, 91, 120, 127, 140, 149.

630 Volkan Altay, Faruk Karahan, "Anadolu Geleneksel Tıbbında Güneş Çarpması ve Güneş Yanığı Tedavisinde Kullanılan Tıbbi Bitkiler", *Erzincan Üniversitesi Fen Bilimleri Enstitüsü Dergisi*, 2017; 10 (1), r. 124-137.

digrin. Ji bo xweparastina ji tîrêjên tavê berçavkên ku tîrêjên tavê dişkînin û çend cure melhem, rûn û hwd. tên bikaranîn. Lêbelê li gundan rewş hîn wekî berê ye. Dermanên Kurmancî û bijîşkiya gelêrî têne bikaranîn.

## Zerika Reş

Zerika Reş, bi navê xwe yê tibî Hepatît C, nexweşînek e ku bi rêya xwînê belav dibe. Gava neyê nojdarîkirin dibe sedema penceşêr yan pîreşikê (fatereşk) û mirinê. Niha li rûzemîna erdê dinyayê nêzî 70 milyon mirovî re enfeksiyona Hepatît C (HCV) ya mayinde heye. Nexweşîn piştî gelek salan berbelav dibe û ev ji bo mirovan dibe sedema tirsê. Li gorî daneyan, wîrûsa Hepatît C yê (HCV), her sal bi kêmanî dibe sedema mirina 400.000 mirovî. Li aliyêkî pêşketinên qada tiba nûjen, nojdariya vê nexweşînê hinekî hêsan bûye û zerika reş, di 12 hefteyan de tê dermankirin lê li aliyê din bi milyonan mirov hîn jî nikarin xwe bigihînin vê nojdariyê.[631]

*Zerika reş*, nexweşîneke dijwar û xetere ye. Nexasim piranî li kesên navsere û pîr peyda dibe. Wekî nexweşîna pîreşikê (fatereşk) jî tê zanîn. Ji wir dest pê dike û li laşê mirov belav dibe.

Li herêma Semsûrê, ji ber ku gel hay ji sedema vê nexweşînê tuneye, rêbazeke nojdariyê ya berbiçav jî tuneye. Lêbelê gel dizane ku xelasiya ji vê nexweşînê ne hêsan e.

"Diwên, zerikê reş li cixare, derd û meraqê çêdiwe."[632]

Wekî sedema nexweşînê "cixare" û "derd" û "meraq" tê zanîn. Dema ku bobelatek yan jî tiştekî ku mirov gelekî bixe nav şermeke giran; kesên ku bi gotina gel, *"pozê wan dişewite"* yan *"namûs di pozê wan de heye"* gelekî li ber xwe dikevin. Li ser vê yekê nexweş dikevin. Heger derfet hebin serî li nexweşxane û bijîşkên nûjen didin. Ku derfet tunebe li malê dikevin nav livînan. Jêder, Süleyman Taşçıyê 90 salî sedema vê nexweşiyê

631 "Hepatit C", http://sinirtanimayandoktorlar.org/salgin-hastaliklar/ufr-2017-hepatit-c/ (22.11.2018).
632 Jêder: 48.

weha şîrove dike:

> "Oxil, kî çi diwê bira bê. Cixare meriya nakuje. Mi nod sal zêde kiriye û tê bîra mi û vir va ez î cixarê vedixwim. Sewama gê kul û derd in. Ya zerikê reş jî. Xadê şalmê meriya neke ber fediyê."[633]

Gelek kes nizanin ku ew nexweşî vegir e. Der û cîran, nas û dost demên dirêj li ba nexweş dimînin. Naxwazin ku wî tenê bihêlin. Kesê/a nexweş dinepixe, rengê wî/ê zer dibe. Ji xwarin û vexwarinê qut dibe. Ji bo zerika reş, tiştên şêrîn yên wekî dims, bastêq, kêsme bi nexwaş didin xwarin û vexwarin.[634] Hin kes jî nexweşê xwe dibin ber ziyaretan li wir loqmeyan didin û dia dikin da ku nexweşê wan sax bibe. Mixabin, digel hemû hewldanan nexweş di demeke kin de jiyana ji dest dide.[635]

### Kêmgirtin (Nêmgirtin)

Kêmgirtin bi serê xwe ne nexweşî ye lêbelê encama nexweşiyê ye. Berteka laş ku li dijî her cure destwerdanên dervejî û navxweyî ye. Gava laş bertekê nîşanî mîqrob, bakterî, wîrûs hwd. dide kêm çêdibe. Wek mînak, di dema derbxwarin, birîndarî û hwd. de tehde li laşê mirov tê. Heger devera ku tehde lê bûye neyê dermankirin/nojdarîkirin an jî li ber nexweşînê berteka laş tunebe ew dever kêm digre. Kêmgirtin, gelek caran, ji ber mîkroorganîzmayên ziyandar ku li deverên cihê yên laşê mirov kom dibin, li ser çermê laş yan jî nav lebatên navxweyî de jî çêdibe.[636]

Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de, li gorî sedemên kêmgirtinê rêbazên nojdariyê jî diguherin:

- Heger kêm ji ber sitiriyekê be, ji bo ku êşa wê kêm bibe û sitirî bi hêsanî derkeve pîvaza hişk di bin agir de dikelînin û

---

633 Jêder: 10.

634 Jêder: 1, 12, 19, 141.

635 Jêder: 89, 149, 159, 160, 164.

636 Mustafa Özdoğan, "İltihaplanma Nedir?", https://www.drozdogan.com/inflamasyon-yangi-iltihaplanma-nedir, (20.10.2018).

didin ser. Şevekê li ser dimîne. Serê sibehê cihê ku sitirî ketiye zer dibe. Derziyekê li ser agir germ dikin, piştre sar dikin û hêdika kulê bi der dikin.[637]

- Heger kêmgirtin ji ber birînekê be, cihê ku kêm girtiye bi sabûnê û ava şîrgermî dişon. Piştre kulê bi derziyê der dikin û heta ku xwîn jê hatiye diguvêşin. Piştre kulê bi paçikekî paqij girêdidin. Serê du-sê rojan carekê wî paçikî diguherin.[638]

> "Ku kulê di dêv ya jî gewriyêda we, hewik xwê dikin nav avê. Avşorkê şêdikin. Royê sê çar cara di devî xa û gewriyê xa werdidin."[639]

Heger dev, diran an jî qirika mirov kêm girtibe, sûravkê (ava şor) yan jî simaqa ku bi xwê hatiye kelandin tê dawerivandin û sarkirin. Ew ava simaqê di dev û gewriyê de tê xulxulandin û tif/tûkirin. Ev pêkanîn heta ku kêm (îltîhab) biqede yan jî zuha bibe rojê du sê caran tê dubarekirin.[640]

Heger kêmgirtin ne li devereke li ber çavan be, tê bawerkirin ku lebatê ji hundir ve kêm girtiye. Di rewşeke weha de tiştek nayê kirin. Tenê hin xurekên ku taqeta laşê mirov zêde dikin didin nexweş. Heger ev rêbaz jî bi kêr neyê kesê/a nexweş radikin nexweşxaneyan, cem bijîşkên nûjen. Bijîşk, nojdariyên pêwîst dike û bikaranîna dermanên sentetîk pêşniyaz dike.[641]

## Zikêş (Navçûyîn)

Zikêş, wekî çûyîna destavê ya rojê ji sê caran zêdetir yan virikîbûna zarokên ku şîr dimijin e. Zikêş, bêtir di encama nexweşînekê de çêdibe. Bi zikêşê re dibe ku zarok verişin, nava wan biêşe û bisincirin.[642] Heger zikêş demdirêj be, hem ji bo zarokan hem jî ji bo mezinan rewşeke xeternak e û pirî caran

637 Jêder: 7, 12, 25, 40, 88, 98.
638 Jêder: 10, 24, 77, 80, 99, 100.
639 Jêder: 155.
640 Jêder: 2, 4, 9, 15, 30, 33, 70, 74, 86.
641 Jêder: 1, 8, 10, 13, 17, 25, 29, 38, 44, 58, 81, 95, 107.
642 Suzan Yıldız, Serap Balcı, "Çocuklarda Akut İshal ve Hemşirelik Bakımı", *Hemşirelikte Eğitim ve Araştırma Dergisi*, 2008; 5 (2): 9-16.

dibe sedema mirinê. Sedemên zikêşê diguherin. Piranî ji ber ava qirêjî çêdibe. Lêbelê ji ber xurekên neşûştî, hin celebên fêkiyan, jehrîbûn; nexweşîna koleraye yan jî ji ber hin cure mîqrob û wîrûsan jî çêdibe. Nexasim jî di dema zarokatiyê de gava zarok ji şîr tên vekirin û zarok dest bi xwarinê dikin, gelek jê ji ber zikêşê dimirin.[643]

Li gorî daneyên Wezareta Tenduristiyê ya Tirkiyeyê, li dinyayê her sal di nav zarokên ji 5 salî û piçûktir de ji milyarekî zêdetir bûyerên zikêşê pêk tên û ji van nêzîkî 1.8 milyon zarok dimirin.[644] Di sala 2019an de ev hejmar daketiye 1.7 milyar waqie û mirina 525 hezar kesan.[645] Lê dîsa jî ev hejmareke zêde ye. Li Tirkiyeyê, her sal gelek kes bi vê nexweşînê dimirin. Bi xêra hişmendiya civakê, tevdîrên tenduristiyê û pêşketina derfetên nojdarîbûnê hejmara kesên ku bi zikêşê dimirin her sal kêmtir dibe. Mînak, di sala 1986an de li Tirkiyeyê 30 hezar zarokê ji 5 salî piçûktir ji ber navçûyînê mirine. Ev hejmar di sala 2007an de daketiye 10 hezaran.[646]

Li her welatî û civakê li gorî zanîn û tecrûbeya endamên civakê nexweşîn bi sedemên cihê ve tê girêdan. Di şîrovekirin û dermankirina nexweşînan de bandora ziman, ol, erdîngarî û baweriyê hêmanên sereke ne. Gelek nexweşîn bi hêzên derasayî, sêr û olan têne şîrovekirin. Di mijara tenduristiya zarokan de dayik çiqas hişyar û zana bin jiyana zarokan jî ewqas ewle dibe.

Berê li herêma Semsûrê ji bo ku pêşî li navçûyînê/zikêşê were girtin, piranî xwarinên zuha didan zarok û mezinan. Nedihîştin ku kesê/a bi zikêşê ketiye bi rojan avê vexwe.[647]

---

643 Jêder: 1, 4, 5, 14, 17, 26.

644 Gülden Köksal, Hülya Gökmen Özel, *Bebek Beslenmesi*, Sağlık Bakanlığı Yayınları, No: 726, 2. Baskı, Ankara 2012, r. 19.

645 Tuğba Demir, Saide Mebrure Dağdaş, Levent Akın. "İshalli Hastalıkları Önleme ve Ağızdan Sıvı Tedavisi Haftası", *HÜTF Halk Sağlığı AD. Toplum İçin Bilgilendirme Serisi 2018/2019-58* http://www.halksagligi.hacettepe.edu.tr. 12.01.2021.

646 Hülya Çakmur, Çocuklukta Enfeksiyöz Diyare ve Dehidratasyon, *Kafkas J Med*, Sci, 2013; 3 (2): 97.

647 Jêder: 1, 12, 20, 23, 51, 93, 126.

"Digotin, bi zikêşê ketiye; aman avê medinê. Bilxurî hişk bidinê, çayê hişk bidinê. Ku heta du-sê roya xaş newûya, dimir. Li gund belkî deh kurik bi vî avayî mirin. Hîn wê salê, êkî Komîrî mir. 50 salî xa zêdetir kirûwû. Neçû tixtor, av jî venexaribû, mir."[648]

Ev pêkanîna nebaş bûye sedema mirina gelek zarok û mezinan. Lewra jiyana mirovan li ser avê ye. Kesê/a ku laşê wan bê av bimîne, di hundirê demeke kin de, di serî de gurçik, lebatên laşê wî/ê zuha dibin. Ew jî dibe sedema mirinê yan jî astengdariyê. Lêbelê di salên dawî de li gorî pêşketina hişmendiya civakê av di serî de xurekên din yên ron jî didin kesê/a ku bi zikêşê ketiye û nava wî/ê diçe. Li herêmê pêkanînên giştî weha ne:

- Bilxûr (sawarê hişk) didin nexweşan.
- Çaya hişk didin nexweşên zikêşê.
- Penêr dixin nav paçikekî şil û dixin binê agir. Piştî ku pijiya, didin zarokan.

"Sewê zikêşê, me penêr dikir nav paçikekî, paçik şil dikir û dixist binê êr. Paşê me derdêxist dida kurikan."[649]

- Xurekên zuha yên wekî kartolên kelandî û nanê zuha didin nexweşan.
- Şorbeya mast çêdikin û bi germî didin nexweşan.
- Di salên dawî de qolaya reş didin vexwartin.[650]
- Av, dew û hwd. vedixwin.
- Pelên hêjîr û çinaran dikelînin, ava wan vedixwin.[651]

"Li Cêlika berê sewê zikêşê çiloyên hêjîran û çinaran dikelandin, ava wan vedixwarin."[652]

- Qehweya hêrayî û leymûnê bi ser nexweş ve dikin. Her carê hinek qehweya hûr – mîqdara wê li gorî sal û qelewbûna

648 Jêder: 26.
649 Jêder: 23.
650 Jêder: 1, 3, 17, 20, 29, 35, 46, 58, 69, 70, 76, 78, 86, 93, 134.
651 Jêder: 45, 60, 61, 72, 90.
652 Jêder: 77.

nexweşan diguhere- dixin nav kevçiyekî şîvê û çend dilop leymûn bi ser de diguvêşin û vedixwin.[653]

Li herêmên din yên Tirkiyeyê jî pêkanînên rengîn hene:

Ji bo pêşî li zikêşê bê girtin ji hin fêkiyan sûd tê wergirtin. Mesela, tê bawerkirin ku qeresî yan jî kelandina bistiyên wan û vexwarina ava wan pêşî li zikêşê digre. Her weha dîsa tê bawerkirin ku xox jî pêşî li zikêşê digre.[654]

## Guhrepik (Guhlepik)

Guhrepik yan jî guhlepik piranî wekî nexweşîneke serdema zarokatiyê ku wekî nepixîna derdora guh û qirikê tê pênasekirin.[655] Lêbelê heger kesek di dema zarokatiyê de guhrepikê derbas neke, dibe ku di piştre jî bi vê nexweşiyê bikeve. Di cihên ku gelek mirov li ba hev dijîn ên wekî dibistan, nexweşxane, şîn û şahiyan de zûtir belav dibe. Ji ber ku bin guhê nexweşan diwerime ev nava lê kirine. Kesê/a ku bi guhrepikê dikeve bin guhê wî/ê diwerime, laşê wî/ê diêşe, zû dibetile, germa laşê zarokan heye lê kêm e, ji xwarinê qut dibin.[656]

Di salên dawî de, ji bo ku zarok bi vê nexweşiyê nekevin parzaya[657] guhrepikê li wan dixin. Lêbelê dîsa jî carinan ev nexweşîn dertê holê. Dermanê vê nexweşiyê nîne. Bi bêhnvedanê, bi xwarinên ron û nerm piştî neh deh rojan bi xwe derbas dibe. Dîsa jî li malê hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî têne meşandin. Pêkanîna herî berbelav ev e ku tiştên germ didin ser. Wisa tê bawerkirin ku germahî dê werima bin guh belav bike û êşê kêm bike.[658]

"Berê sewê guhrepikê, sawûn germ dikirin didan ser."[659]

653 Jêder: 13, 20, 52, 60.

654 Mustafa Sever, "Türk Halk İnançlarında ve Halk Hekimliği Uygulamalarında Meyve", *Türklük Bilimi Araştırmaları Dergisi (TÜBAR)*, 2004; XVI, r. 105-106.

655 Yelda Türkmenoğlu, "Sema Büyükkapu, Nedim Samancı, Presternal Ödem ile Gelen Bir Kabakulak Vakası", Çocuk Sağlığı ve Hastalıkları Dergisi, 2006;4 9, r. 39-41.

656 Jêder: 1, 2, 3, 9, 16, 18, 105, 134, 141.

657 **Parza**: Aşi, derziya ji bo pêşîlêgirtina nexweşînan.

658 Jêder: 23, 118.

659 Jêder: 118.

"Me sêv dikelendin, dikutan didan ser."[660]

Ji bo vê yekê jî, sabûnê li hember sobeyê, agir û hwd. germ dikin hêdika didin ser devera ku nepixiye. Sêvan dikelînin û di nav paçikekî de dieciqînin, piştre paçik lê didin hev û didin ser cihê ku nepixiye. Ji ber ku qirik li kesê/a nexweş tê hev, nikare xwarinên zuha û hişk bixwe. Ji ber vê yekê jî xwarinên rohn ên wekî dims, şorbenîsk, şorbeşîr, dev û hwd. vedixwe. Ji bo ku gewriya zarokan neêşe tiştên tirş û tûj nadin zarokan.[661]

## Qepisî/Gîr

Qepisîbûn, bi navê xwe yê dîtir konstîpasyon, bi awayekî zanîstî, gava liv û tevgera rûviyan hêdî bibe heftê sê çar caran terxîbûn çêdibe. Qepisîbûn, dibe sedema tamnevalakirina terxiyê, terxîbûna êşbar û werimandinê. Di nav terabebûn/xerabebûna rûviyan de nexweşîna herî berbelav qepisîbûn e. Qepisîbûn, carinan bi awayekî xitimîner carinan jî wekî hêdîbûna liv û tevgera rûviyan pêk tê.[662]

Li Semsûrê, sedema qepisîbûnê wisa tê zanîn ku aşik û rûvî ava hin xwarinan zuha dikin.[663] Di rewşên weha de pêkanînên bijîşkiya gelêrî dikevin meriyetê. Di nav gel de hin pêkanînên ku pêşî li ber qepisîbûnê digrin weha ne:

- Ji bo rûviyên kesên qepisî bûne bixebitin, hin xurek û tiştên rohn didin wan. Hinek rûnê nivîşkî dixwin yan rûnê zeytê vedixwin. Heger kesê/a qepis zarok be du kevçiyên çayê; heger mezin be kevçiyekî şîvê rûnê zeytûnan vedixwe.
- Li gorî demsalê, mişmişan yan çîran dixwin. Ango xoşavê çêdikin û vedixwin.
- Avê vedixwin.
- Riwekên girêzî yên wekî pirpar, gûriz û hwd. dikin şîv û

660 Jêder: 23.
661 Jêder: 22, 23, 27, 30, 48, 52, 59, 60.
662 Murat Korkmaz Fatih Yüksel Murat Ünalacak, İlhami Ünlüoğlu, "Kabızlık Yakınması Olan Hastanın Birinci Basamakta Yönetimi", *Konuralp Tıp Dergisi*, 2011; 3 (3): 35-41.
663 Jêder: 18, 42, 79.

dixwin.[664]

> "Hewik mot germ dikin û hewik rûn dikin nav, vedixwin." "Gir-hûr ferq nake, rûn bi ser va dikin; ya kevçiyekî çayê, ya jî kevçiyekî şîvê."

Li gor demsalê mişmiş an jî çîr tên xwarin an jî xoşava wan tê vexwarin. Av tê vexwarin; xwarinên bizebze û avî tên xwarin. Hinek dimsa tirî tê germkirin û kevçiyek rûnê nivîşkî tevlî nav tê kirin û tê vexwarin. Heger sedema qepisîbûnê tiralî be, liv û tevgera li ser lingan pêşniyarî kesên qepisî tê kirin.[665]

## Sêdî (Siyadî, Xişt, Qeyrana Dil)

Derbarê vê nexweşînê de agahiyên zêde nînin. Lêbelê li gorî diyardeyên ku jêder behs dikin, wekî qeyrana dil xuya dike. Lewra, nexweşên dil û tamaran gazinan ji tengbûna hilmwergirtinê, hesta gêjbûnê, êşa sing û sepetê, di milan de tewizîn, perçivîn, lêdana zêde ya dil, betilîna di demeke kin de û hwd. dikin.[666]

Sêdî û xişt tenê wekî nav di nav gel de hene. Li herêmê ji bo *"mirina ji nişka ve"* têne pênasekirin. Dibêjin, *"Sêdî lêxistiye."* Hin kes jî dibêjin, *"Xiştê lêxistiye."* Ew nexweşîn piranî di xew de pêk tê. Tu tevdîrên ku bêne girtin tunene. Piştî ku mirov derbarê vê nexweşînê de hinekî hişyar bûne êdî hin kes li xwarin û vexwarina xwe miqate dibin.[667] Li ser vê mijarê gotinên ku her dubare dibin ev in:

> "Rehmetî spîsax bû, li min û te çêtir bû. Êvarî şîva xa xwar, nimiya xa kir û ramedî. Siweda rawûn ku di nav ciya da bûye êzing. Di nav ciyê xa da mir."[668]

Li gorî hin jêderan kesê/a ku sêdî lê dixe û dimire laşê wî/ê

664 Jêder: 9, 16, 17, 30, 41, 50.

665 Jêder: 9, 11, 15, 20, 60, 65, 82, 117, 125. Sedat Tavşanoğlu, "Kalp Hastalıkları Semptomları", *Cerrahpaşa İç Hastalıkları*, (347-350), İstanbul Medikal Yayıncılık, İstanbul 2007.

666 Jêder: 1, 7, 12.

667 Jêder: 4, 9, 17.

668 Jêder: 23.

zû reş dibe.

> "Ji qirîzê ra digotin "sêdî" lêxistiye. Xişt û sêdî gi yêk e. Ê ku li ber sêdiyê yanê xiştê bifilite, kût diwe. Dest û ningên wî nagrin. Êk cara jî xişt li hêlik meriya dixe."[669]

Li gorî hin jêderan, sêdî rawirekî xêw e. Di xew de li mirov asê dibe. Tê li ser devê mirovan rûdine, nahêle ku mirov bêhna xwe bide û bistîne. Ji ber vê yekê jî mirov dimire. Li hêla din, kesên ku vê yekê wekî baweriyeke batil dibînin jî gelek in.[670]

Wekî ku xuya jî dibe, ev agahiyên derbarê sêdî/siyadî/xiştê de hevdu nagrin. Ew jî tê wê wateyê ku agahiyên derbarê vê nexweşînê de bi gumaneke mezin şaş û xelet in. Lê ya girîng ev e ku di nav gel de nexweşîneke bi vî rengî heye. Ji aliyê din ve tiştê balkêş ev e ku -heger kesê/a mirî têra xwe jiya be yan navsere be[671]- gel bi mirineke bi vî awayî ne bi gazin e. Wekî *"dana Xwedê"* û *"mirina pak"* tê pejirandin. Ew yek jî hinekî sebir û aramiyê dide malbata kesê ku bi sêdî/xiştê miriye.

## Kula Reş/Kula Pîs (Penceşêr)

Kula reş (penceşêr), navê komeke nexweşînan e. Ji ber şaneyên (hicre-malik) ku bi awayekî bêkontrol di lebatên cihê de zêde dibin çêdibe, hêla wê ya klînîkî, nojdariya wê û berpêbûyîna ji bo wê cihê ye. Li gorî rapora penceşêrê ya Saziya Statîstîkê ya Tirkiyeyê, di sala 2013an de li gor temenan rêjeya penceşêrê di zilaman de ji sed hezarî 267,9 e û di jinan de jî ji sed hezarî 186,5 e. Bi awayekî giştî sixletiya peydabûna penceşêrê ji sed hezarî 227,2 ye. Dîsa li gorî vê raporê, di heman salê de li Tirkiyeyê di 174 hezar kesî de êşnasiya penceşêrê hatiye danîn. Sixletiya peydabûna penceşêrê ya Tirkiyeyê di ser nîvekiya cîhanê re ye. Li gor welatên Yekîtiya Ewropayê û Amerîkayê jî

---

669 Jêder: 54.

670 Jêder: 21, 80, 99, 102.

671 Helbet mirin di her temenî de ne xweş e lêbelê li hêrêmê, mirina kesê ji 60-70 sal û zêdetir wekî rewşeke asayî tê pejirandin. Lewra gel, piştî vî temenî mirineke bêêş û ezab hêvî dike.

di warê penceşêrê de, hem di jinan hem jî di mêran de, leza wê kêm e. Li Tirkiyeyê 5 şêweyên sereke ên penceşêrê, dişibin ên li cîhanê û welatên pêşveçûyî. Di mêran de herî zêde penceşêra qirikê û pişikê; di jinan de jî penceşêra memikan pir tê dîtin.[672]

Li herêma Semsûrê ji bilî navê çend cure penceşêran ên wekî rîş, zerika reş û hwd. ji hemû cureyên penceşêran re "kula reş" yan "kula pîs" dibêjin. Ji ber ku sedema van nexweşiyan nayê zanîn, pêkanînên dermankirina nexweşiyan jî bi eletexmînî ye. Hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî weha ne:

- Nexweşan li ziyaret û ocaxan digerînin.[673]

- Xwarinên ku dilê wan diçê (wekî di germa havînê de berf an jî di zivistanê de zebeş) ji wan re peyda dikin.

- Daxwazên wan çi bin (wekî zewicandina keç û lawên xwe û hwd.), ji bo ku bextewar bibin bi cih tînin.[674]

- Dema ku rewşa nexweş xedar dibe, kî çi dermanî pêşniyar bike, wî diceribînin. Piranî dermanên ji *"tiştên ne ji rêzê"* didin nexweşan. Wekî şîrê keran, goştê jûjiyan, goştê maran, giyayê gezgezkê û hwd. Heta ku rih di nexweş hebe, hêviya xwe qut nakin.[675] Derbarê nebirîna hêviyê ya ji Xwedê de gelek çîrokên gelêrî hene. Ji bo girîngiya mijarê em dixwazin çîrokekê ji devê jêderan parve bikin. Ev çîrok ji aliyê hêvî, bawerî û bijîşkiya gelêrî ve girîng e:

> "Diwên, di zemanekî da meriyek nexaş ketiye. Çûyê tixtoran cihawa wî dane wî. Ew birine bal hekîmê Kurmancî. Wî jî gotiye nexweşê xa biwin malê. Niva tiştekî ku ez bikim tuneye. Zemanekî û şûnde bîhn dikeve hestiyê nexaş. Hung diwe ku niva kes nikane nîzîkî wî biwe. Meriyê wî, radikin nexaşî xa û wî diwin li nav erdekî datînin. Lê ra holikekê çêdikin, hewik pûş û pelax didin hev û wî li ser dirêj dikin. Hewik nan jî didin kêlekê û wî li wir dihilin. Teslîmî Xadê dikin.

672 T.C. Sağlık Bakanlığı Türkiye Halk Sağlığı Kurumu, *Türkiye Kanser İstatistikleri Raporu*, Ankara 2016.

673 Jêder: 10, 24, 77, 80, 83, 98.

674 Jêder: 1, 7, 36, 48.

675 Jêder: 6, 7, 13, 24, 44, 62, 81, 97.

Çîrok e... Ka çend ro bi ser va derbas diwin, kes nizane... Diwên, şivanek di wir ra derbas diwe, çav li wî meriyî dike, dilê wî pê dişewite. Diwê, 'ka ez hewik şîr bidim vî merî, lê çitol? Ferek ku ez şîr tê da bidoşim tinê.' Wan deran di çav xa ra dike, dinihêre, qalikekî kûsiyan diwûne. Di nav pez da miyeke qer (reş) heye, ê sewr e. Şîr tenê di guhanên wê de heye. Wî şîrî di wî qalikî da didoşe. Dike nake nikane wî şîrî bi ser wî merî va ke. Mêrik, nikane bi xa were. Î mîna miriya ye, ranawe. Şivan, diterikîne, şîr datîne kêlekê wî û dihere. Vêsikê û şûnda, marikî reş yê heftê salî tê û di şîrî da vedirşe. Meriyê nexaş, ka çiqas zemanî û şûnda bi xa dihese. Pir tî bûye. Li dorhêlê ma mêzi dike, wî şîrî diwûne. Bi zorê di qultan li wî şîrî dixe. Ti bi ser da nare, mêrik vedirşe, pir vedirşe. Paşê, hen bi hen xaş diwe. Radiwe ser xa û berî xa dide mala wî hekîmê Kurmancî. Diwê:

- Filankes, te go çara nexaşiya te tune. Ne ez î xaş bûm?

Hekîmê Kurmancî lê vedigerîne, diwê:

- Min nego, dermanê te tuneye. Lê min ê li te ra ji ku bianiya şîrê miya qer, zêhra marî reş î heftê salî û qalikê kûsiya. Em bên me van gi dîn, me yê çito mar bida verişandin?"[676]

Wekî ku ji çîroka jor jî tê fêmkirin, heger Xwedê bixwaze, şîrê miha reş û jehra marê reş yê heftê salî di qalikê kûsiyan de bi mirov dide vexwartin û ji mirov re dibe şifa û derman.

Li Semsûrê riwekên wekî zaqqumê, çîçekmast, kereng û hwd. jî bi şêweyên cihê li dijî kula reş têne bikaranîn.[677] Li hin herêmên Anadolê jî rêbazên bi vî rengî hene. Wek mînak, li bajarê Aydınê giyayê gezo, şîrê lokan, şîrê keran û hwd. wekî dermanê kula reş tê bikaranîn.[678]

Piştî pêşketina bijîşkiya nûjen, di mijara penceşêrê de pêkanînên bijîşkiya gelêrî gelekî kêm bûne. Li dewsa wan, di ber-

676 Jêder: 10.

677 Abuzer Gelse, *Adıyaman ve Çevresinin Etnobotanik Özellikleri*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Yüzüncü Yıl Üniversitesi, Fen Bilimleri Enstitüsü Biyoloji Anabilim Dalı, Van 2012.

678 Züleyha Ülger, *Aydın (Merkez) ve Çevresinde Halk Hekimliği*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Adnan Menderes Üniversitesi, SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı, Aydın 2012, r. 103.

nameyên televîzyonan de gelek drog, derman û riwekên din wekî çareseriya penceşêrê têne pêşniyarkirin. Helbet ya rast ew e ku di nojdariya penceşêrê de rêbazên bijîşkiya hemdem werin şopandin. Lêbelê car heye ku ew rêbazên hemdem jî nabin çareserî. Bijîşk berê nexweşan didin malê. Di rewşên weha de, nas û xizmên nexweşan careke din berê xwe didin pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî.

## Kegecîbûn

Kegecîbûn, bi kurt û Kurmancî, dirêjkirin û dubarekirina deng, kîte û peyvan e.[679] Kesê/a kegec, ji bo peyvan tam bilêv bike hin dengan dubare dike. Çend cureyên kegecîbûnê hene. Kegecîbûn, dibe ku biyolojîk û fizyolojîk be.[680] Zimanê hin kesan ji makzayiyê ve baş nagere. Dibe ku piştî bûyerekê çêbibe. Lêbelê ev rewşeke demborî ye û ji xeynî rewşên îstisnaî û di demeke kin de derbas dibe. Kesên kegec, di dema axaftinê de li paş dimînin. Hin peyv û kîteyan an qet nikarin bilêv bikin an jî piştî demek dirêj bi zorê bilêv dikin. Lêbelê ev rewş ji bo her kesî ne derbasdar e. Hin kesên kegec, dema kilaman distrên qet zehmetiyê nakişînin.[681]

Piraniya kegeciyê jî derûnî ye. Ji ber hin pirsgirêkên derûnî zimanê hin mirovan nagere. Piştî ku pê dihesin ku kesên li hember li hêviya temamkirina peyvê ne û êdî aciz dibe ew jî yekcar kegec dibin û dest û lingên wan dilerizin, rûyê wan diguhere û devê wan xwar dibe. Serê xwe dihejînin, çav û birûyên wan bêhemdî dilivin. Hin kes jî hene ku dema ku dikevin ber şermê zimanê wan ji bo demekê disekine.

Kegecîbûyîn, piranî rewşeke derûnî ye. Car heye zimanê hin mirovan ji ber pirsgirêkên derûnî nagere. Kesên kegec, di dema axaftinê de gava dibînin kesên li wan guhdar dikin li benda wan in, nerihet dibin, dest û lingên wan dilerizin, rengê wechê wan diguhere û devê wan xwar dibe. Serê xwe dihejînin, çav û

679 www.e-psikiyatri.com/kekemelik-nedir Erişim tarihi: 24.10.2018.
680 www.ntv.com.tr/saglik/12-gunde-kekemelikten-kurtuldular (19.11.2018).
681 Jêder: 24, 136.

birûyên wan xwe bi xwe dileqin. Zimanê hin kesan jî ji şerma heta qederekê nagere.

Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de, hin pêkanînên ji bo başkirina kegecîbûnê ev in:

- Heger zarok biçûk bin, demareke bin zimanê wan (kistik) tê jêkirin. Tê bawerkirin ku ev demar nahêle zimanê wan bigere.[682]

- Zarokên kegec, qederekê li cem zarokên ji wan biçûktir lê dikarin biaxivin dimînin. Tê bawerkirin ku wê zarok bi vî awayî şerm nekin û bi rihetî biaxivin.[683]

- Kilîda mizgeftê bi zimanê zarokên kegec tê xistin. Tê bawerkirin wê bi vî hawî bi rihetî bikaribin biaxivin.[684]

- Zarokê kegec dibin ser tirbe û ziyaretan. Axa li wir dixin nav avê û wê avê didin zarokê kegec.[685]

- Şekirên hişk didin wan û ji wan tê xwestin ku gava ku şekir di devê wan de ye hewl bidin ku biaxivin. Benîşt dicûn.[686]

Piştî van pêkanînan heger zarok baş nebin wan dibin saziyên tenduristiyê.

## Cihçûyîn, Velîstin, Şikestin û Derizîna Hestiyan

Şikestin, ji ber sedemên cur bi cur xerabûna yekpareya hestî ye. Şikestin, an ji ber derbekê yan jî xwe bi xwe çêdibe. Di dema extiyariyê de şikestina xwe bi xwe zêdetir e. Cihçûyîn, cihderketina movikê ye. Di dema zorlêkirinê de çêdibe.[687] Ketina ji cihekî bilind, liv û tevgerên ji nişkave, hilgirtina amûrên giran an jî derbxwarin dibin sedema şikestina hestî, jicihderketina hestî yan jî derizîna hestiyan. Heger derb dijwar be hestî dişikê. Cihê derbxwarî diwerime, reş dibe û diêşe.[688]

---

682 Jêder: 1, 6, 7, 13, 29, 30.

683 Jêder: 33, 51, 90, 127.

684 Jêder: 42, 54, 69, 70, 85.

685 Jêder: 19, 26, 41, 94, 122, 128, 129, 138, 149, 160.

686 Jêder: 131, 140, 155.

687 H. Fazıl İnan, Zülfinaz Kurt, İlknur Kubilay, *Temel İlkyardım Uygulamaları Eğitim Kitabı*, T.C. Sağlık Bakanlığı Temel Sağlık Hizmetleri Genel Müdürlüğü İlkyardım ve Acil Sağlık Hizmetleri Daire Başkanlığı, Ankara 2011, r. 35-36.

688 Jêder: 16, 23, 24, 51.

Velistîn an jî tehlbûna masûlkeyan, hem ji ber kêmbûna liv û tevgerên laş yan xamiya laş hem jî ji ber liv û tevgerên ji nişka ve pêk tên.[689]

Li herêma Semsûrê, di rewşên bi vî rengî de pirî caran mirov diçin cem hekîmên Kurmancî. Ev kes jî wekî hemû hekîmên din ên Kurmancî di warê tibî de li dibistanan nehatine perwerdekirin. Hekîm, li gor zanîn, çavdêrî û tecrûbeyên xwe hestiyan dicebirînin, ling û dest û milên ku ji cih derketine dixin cih.[690] Hema bêje li her gund, navçe yan jî taxan hekîmên ku ji şikestin û cihderketinê fêm dikin hene. Her weha ev kes şikestinên lingên ajalan jî dicebirînin û girêdidin. Car heye hestî naşikê lê tahl dibe. Di rewşên weha de nojdarî li malê tê pêkanîn.[691]

Gelek caran ji ber ketina ji cihekî bilind, velîstina lingan, xwarina derbekê û hwd. hestiyên mirovan diderizin yan dişikên. Cihê ku diderize yan jî dişikê piranî hestiyên tenik in. Wekî tilî, zend, mil, ling, şeyê ling, parsû, serî û hwd. Lêbelê heger derba ku hatiye xwarin mezin be, hestiyên sitûr jî dişkên. Cihê ku deriziye bêyî ku bê pêçan jî piştî demeke dirêj bi xwe baş dibe. Lêbelê heger bê pêçan ew dema başbûnê kintir dibe. Cihê şikestî, heger di demeke kin de neyê dermankirin û girêdan, xwîn dikeve navbera hestiyan û tenduristiya mirovan dikeve xetereyê.

Li herêma Semsûrê, gelek kesên ku bi salan e bi dermanên Kurmancî/Kurdewarî bijîşkiya gelêrî dikin hene. Ji wan re *"qirixçî"*[692] tê gotin. Wan jî ji mezinên xwe bi rêya çavdêrî û ceribandinê hînî vî karî bûne.[693] Cebarên wekî Awê Xidê û Hesenê Gêler di vê mijarê de li herêmê bi nav û deng in.

Ji bilî serî di hemû cureyên şikestin û derizînan de rêbaza cewarê û girêdanê tê bikaranîn. Berê, ji bo girêdana hestiyên şikestî dep, qaşilê spîndaran, paçik, hêk û ben dihate bikaranîn.

---

689 Caroline Green, *Hastalık Tedavisinde Alternatif Çözümler*, Emre Ebetürk (Çev.), Arkadaş Yayınevi, Ankara 2007, r. 42.

690 Jêder: 3, 12, 20, 23, 24, 70, 79.

691 Jêder: 10, 58, 61, 67, 79, 100, 108.

692 Peyveke bi zimanê Tirkî ye lê di nav gelê herêmê de bi cih bûye. Wate: Cebar, kesê ku hestiyan dicebirîne.

693 Jêder: 3, 12, 20, 23, 24, 70, 79.

Niha li dewsa qaşilê spîndaran (qewax-hewr), dep yan qarton (kaxiza stûr); li dewsa cewara hêkan alçi; li şûna potikan jî paçikê pêçanê yên tibî tên bikaranîn. Berê, hosteyên şikestin û cebirandinê di demsala payîzê de diçûn li gundan digeriyan. Li ku spîndarên jêkirî bidîtana ew spî (qaşûr) dikirin, li gorî pêdiviyên xwe dibirîn û hişk dikirin. Li malê hiltanîn. Dema ku pêwîst biba derdixistin û di girêdana hestiyên şikestî de bi kar dianîn.[694]

Dema ku dest an jî lingê yekî/ê dişikê, di demeke kin de dibin cem cebar (qirixçî). Cebar, bi rêya palikandinê berê cihê ku derb xwariye diyar dike. Teşxîsa wê datîne. Dibêje, *"Di vir de şikestiye."* an jî *"Di vir de deriziye."* Piştre, cewara hêkan amade dike û dipêçe, heger pêwîst bibîne du perçe qarton jî dide ser û bi benekî girê dide.[695]

Lawê Awî Xidê ku îro ew jî di rêya bavê xwe de diçe û hestiyan dicebirîne, derbarê mijarê de weha dibêje:

> "Ê min, ez bi xa mîna bavî xa nawim hoste. Bavê min -Awê Xidê- hîn ez î çûçik wûm va îşa dikir. Ku êk diçû tixtor, tixtor lê mêzi dikir. Ku pê nikaribûya digo, 'berin cem Awî Xidê.' Vê paşiyê bavî min digo, 'Siftê herin fîlimê şûnê şikeştî bikşînin, wê fîlmê mi ra ûnin.' Li fîlmê mêzi dikir, hînga girêdida."[696]

Heger şikestin hebe, hekîmê Kurmancî devera ku diêşe dipalikîne. Cihê ku şikestiye zelal dike. Bi alîkariya sabûnê û ava germ wan hestiyên şikestî hêdî hêdî digihîne hevdu. Cewara hêkan lê dipêçe. Piştre, du perçe dep dibire, yekî dide aliyê ser û yekî jî dide aliyê binî û dipêçe; bi benekî girê dide da ku ji cihê xwe neleqe. Pêwîst be careke din paçikê cewarê lê dişidîne. Her ku dem derbas dibe ew cewar hişk dibe, dibe wekî depekî. Heta deh-panzdeh rojan wisa girêdayî dimîne. Cihê ku şikestiye naşon. Heta ku bicebire. Piştî ku dema ji bo vekirinê tê, careke din berê xwe didin hekîmê Kurmancî. Cebar (qirixçî),

694 Jêder: 10, 58, 61, 67, 79, 100, 108.
695 Jêder: 7, 21, 23, 30, 61, 67.
696 Jêder: 159.

cihê pêçayî vedike û lê dinihêre. Heger pêwîstî hebe careke din dipêçe, tunebe nexweş destmiza wî didê û vedigere mala xwe. Di destmizê de tu pîvan tuneye. Ji dilê nexweş yan xizmên nexweş çi bê, ewqas pere didin.[697]

Cebar, piranî hestiyên dest, tilî, pî, mil, ling û çîpan dicebirînin. Lê gava cihê şikestî movik, newq (qorik) û kemax (kulîmek) be, ji ber xetereya wê hekîmê Kurmancî tiştekî nake û berê nexweş dide nexweşxaneyan.

Gava hestî ji cih derketibe, nojdariya wê jî hêsantir e. Cebar (qirixçî), pêşî cihê werimandî û diêşe tespît dike. Paşê bi ava germ, sabûn û bi firkandinê devera ji cih derketiye baş nerm dike, dûre dibe û tîne, dikişîne û dixe cih. Di cihçûyîn û şikestinê de, hokera (faktor) demê pir girîng e. Heger cihê şikestî bi xwîn an jî vehûnê (goşt û hwd.) tijî bibe nojdarî jî zehmettir dibe û cebirandin dereng çêdibe. Car heye seqetî jî çêdibe. Ev astengî car caran jî ji ber ecemîtiya "hekîman" jî çêdibe.[698]

Gelek caran jî ji ber kişandin yan derban hestiyên piçûk ên mirovan ji movikan cih dertên. Cihê ku movik ji hev qetiyaye diwerime û gelekî diêşe. Tiliyên dest û lingan heta kulîmekan jî ji cih dertên. Heger nojdarî di dema xwe de çênebe, ew lebata ku ji cih derketiye pûç û seqet dimîne. Di rewşên weha de hekîmên Kurmancî cihê ku werimiye û gumana jicihderketinê heye bi destan hêdîka dipalikînin. Bi alîkariya ava germ û sabûnê hêdî hêdî mist didin û dikişînin. Dema ku movik kete cihê xwe yê asayî werima dest dadikeve û êş kêm dibe. Di bicihkirina hestî û movikan de pêçandin tuneye. Piştî ku movik hate cih êş jî diqede.[699]

Velîstin, piranî ji ber tevgerên bêhemdî çêdibe. Dema ling bêhemdî yan ji ber ketina ji devereke bilind ji nişka ve bitewe, velîstin pêk tê. Asta êş û werimîna ling, li gorî asta velîstinê û zora ku ling hatiye diguhere. Piranî piştî demekê bi xwe baş dibe. Lêbelê ji bo ku werimîn dakeve û êş kêm bibe cebar hin

697 Jêder: 159, 170, 171, 172.
698 Jêder: 19, 24, 33, 47, 48.
699 Jêder: 60, 75, 129, 133, 145.

rêbaz û dermanên Kurmancî pêşniyar dikin:

- Hevîrê şor çêdikin û didin ser lingê ku velîstiye.
- Pîvaza hişk dixin bin agir, dipêjînin. Piştre li ser paçikekî pahn dikin û didin ser.[700]
- Bi ava sar dişon an jî qeşayê (cemed) didin ser.
- Bi ava germ û sabûnê mist didin û dişon.
- Bi potikekî yan çarikekê girêdidin.
- Heta sê çar rojan pê li erdê nakin.
- Lingê ku velîstiye datînin ser balîvekê û hwd. li bilindahiyê dihêlin.[701]

Di dema başbûnê de divê zext li cihê ku velîstiye yan jî tehlbûye neyê kirin. Heger nexweş biçe saziyeke tenduristiyê melhemên tên pêşniyarkirin tên bikaranîn. Li herêma Semsûrê -bi taybetî li gundan- cebar hîn jî wek hekîmên Kurmancî pîşeya xwe didomînin û di jiyana rojane de roleke girîng dilîzin.

## Hinciqîn (Kunciyîn)

Ji xisar û xerabûna pergala rehikan ya domdirêj re hinciqîn yan kunciyîn tê gotin.[702] Ji ber derba heyberên hişk û giran laşê mirov dihinciqe ango dikunce. Di nava gelê herêmê de, ji derba ku bi birîndariyê ango xwînîbûnê encam nebûye re *"hişkderb"* tê gotin. Dema ku laş dihinciqe, cihê derbê xisarê dibîne. Heger hestî be dişikê û dibe perçeyên piçûk. Heger derb li cihê bi goşt ketibe, vehûn (çerm û goşt û rehik) zirarê dibîne. Çerm û goşt reş dibe, diwerime û diêşe. Di rewşên weha de gel bi qasî bawerî û zanîna xwe bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî bi kar tîne. Pêkanîna herî berbelav ku niha tê bikaranîn ew e ku qeşayê didin ser cihê ku derb xwariye.[703] Wekî din hin rêbazên bijîşkiya bi dermanên Kurmancî/Kurdewarî weha ne:

---

700 Jêder: 12, 13, 26, 40, 75, 129, 133, 145.

701 Jêder: 1, 2, 11, 15, 24, 118, 134, 150, 159, 160.

702 Mehmet Şükrü Sever, Raymond Vanholder, "Kitlesel Afetlerde Ezilme Sendromlu Hastaların Tedavisi İçin Tavsiyeler. European Renal Best Practice (ERBP) ve Oxford University Press, Türk Böbrek Vakfı, Nisan 2012.

703 Jêder: 17, 18, 23, 38, 150, 159.

- Ji bo ku êş û şewata derbê kêm bike û xwîna pîs (reş) belav bike hevîrê xwê didin ser cihê ku derb xwariye. Hinek arvan, xwê û av li hev dixin û distrên heta ku bibe hevîr. Divê xwêya wî zêde be. Wî hevîrê ku hatiye amadekirin li ser paçikekî pahn dikin û didin ser cihê ku derb xwariye. Bi kêmanî şevekê li ser dihêlin. Heger pêdivî hebe careke din jî didin ser.[704]

Li gundên rojhilatê Semsûrê û deşta Semsatê pîvaz têne bikaranîn. Pîvazeke hişk dixin nav paçikekî şil û dixin bin terafa agir. Piştî ku pîvaz pijiya derdixin. Qaşûr dikin û ji hev derdixin. Wan zûlên pîvaza biraştî hîn ku sar nebûne -bi qasî ku laşê mirov neşewitînin- didin ser cihê ku derb xwariye û bi paçikekî dipêçin. Çend saetan li ser dihêlin. Heger êvar be heta sibehê li ser dihêlin. Bawerî ew e ku ew pîvaz êşê dikişîne nava xwe û birînê dikewîne û şopa derbê wenda dike.[705]

Heger piştî derba hinciqînê cihê ku derb lê ketiye xwîn bûbe û çermê wê henciqî be pêkanîneke cihê tê bikaranîn. Li gundên bakurê Semsûrê pîvazên hişk bi xavî hûr dikin yan li rendeyê dixin. Hinek xwê tevlê dikin û li ser paçikekî radixin. Wî paçikî li birînê dipêçin. Şevekê li ser dihêlin. Heta çend saetan birîn dikewe. Di pêvajoya kewînê de laşê mirov gelekî jan dide û diêşe. Piştre ew çermê ku xisar dîtiye tev radibe. Ji bin ve goştekî nû û çermekî nû tê.[706] Taybetiya vê rêbazê ew e ku cihê ku derb xwariye êdî kul nabe, kêm nagre û şopa henciqînê jî namîne ango laş di demeke kin de xwe nû dike. Jêder İmam Delice yê 41 salî serpêhatiya xwe ya henciqînê weha vedibêje:

> "Ez ne kesekî nezan im. Ez bi Kurdî jî baş dizanim. Min li zanîngeha Stenbolê xwendiye. Heta ku nehat serê min, min jî bawer nedikir. Çend meh berê min qezaya trafîqê derbas kir. Ez li ser motorsiqletê bûm. Erebeyekê ji paş va li min xist. Min hew dît ku ez li erdê me. Min dît ku çoka min birîn bûye. Ambulans hat û ez rakirim nexweşxaneyê. Li wir hinek pansûman kirin û ez şandim malê. Mehek derbas bû, dermanên ku tixtoran

704 Jêder: 8, 10, 11, 14, 24.
705 Jêder: 21, 66, 73.
706 Jêder: 34, 42, 66.

dane min qediyan lê tu fayde nekir. Min nikaribû bimeşim. Xwediyê xaniyê min got: *'Ez ê dermanekî ji te re bêjim. Tiştekî te namîne.'* Min çend pîvazên hişk heta ku av jê hatiye hûr kir. Xwê reşand ser, li ser paçikekî pahn kir û da ser birîna xwe. Heta sibehê ji ber şewatê xew nekete çavên min. Serê sibehê min paçik rakir. Min dît ku qaşilkê birîna min tev rakiriye. Êdî ne lingê min êşiya ne jî şopa birînê ma. Binêre[707], tiştik nema. Ji berê çêtir bû. Ji bo pêvedana mozê, şewata ji ber ava germ jî pîvaz derman e. Wekî antîbiyotîkeke xwezayî ye."[708]

- Heger goşt henciqî be li gorî rewşa derbê û derfetan mewîjên reşik dikutin, didin ser cihê henciqî.[709]

- Goştê nerm dikutin, didin ser devera henciqî û dipêçin. Çend rojan li ser dihêlin.[710]

- Benîştê benîştokê, mewîjên reş tevî dendikan di nav hev de dikutin û didin ser cihê ku derb xwariye û dipêçin.[711]

- Cihê henciqî, piçûk be û derba wê jî ne zêde giran be xurekên şêrîn ên wekî hêjîrên hişk, loqim, kêsme û hwd. didin ser û demekê li ser dihêlin.[712]

Wekî ku ji hevpeyvînan tê fêmkirin heta ku rewşa kesê/a ku derbxwariye ne giran be serî li nexweşxane û bijîşkên nûjen nayê dayîn. Kêm zêde her kesek di vê mijarê de xwedî hin zanîn û tecrûbeyan e.

Li herêma Egeyê zeytûnan tevî dendikan dikutin û didin ser cihê ku derb xwariye. Li Manîsayê bilxur dikelînin heta ku wekî sawar bûye. Piştre wî bilxurî li ser paçikekî radixin û li cihê ku derb xwariye dipêçin.[713] Li Yozgatê benîştê reş, sawarê cehê û mewîjên reş dikutin, didin ser cihê henciqî.[714] Her wekî

---

707 Jêder çoka xwe nîşanî me da.

708 Jêder: 19.

709 Jêder: 41, 42, 55, 64, 99, 116.

710 Jêder: 10.

711 Jêder: 9, 10, 12.

712 Jêder: 5, 6, 16, 26, 33, 52.

713 ÜLGER, Züleyha, *Aydın (Merkez) ve Çevresinde Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Adnan Menderes Üniversitesi, SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı, Aydın 2012.

714 Akın Uyar, *Halk Hekimliği Kapsamında Yozgat Ocakları*, (Yayınlanma-

ku ji mînakan jî xuya dibe, li her herêmê pêkanînên cuda hene.

## Destiroz (Xirtikîn)

Destiroz, bi navê wê yê din xirtik, nexweşîneke zendan ya demkî ye. Dema ku mirov xam be û bi carekê ve zextê li destê xwe bike, destê mirov xirtikî dibe. Destirozî bêtir de destê karkerên avadaniyê û çandiniyê de peyda dibe. Li gundan, li herêmên pal, newal, bi kevir û çiyayî ku karê palehiya hilberînên wekî genim ceh, nok, nîsk û hwd. bi destan dibe. Palehî, bi amûrên wekî qalûc, tirpan (qirim), kef û pêçikan tê kirin. Destê ku ji serê sibehê heta êvarê bi heman şêweyê bixebite zext û zor lê tê. Di ber zendan de êş dikevê. Dibêjin, *'xirtikî bûye'*.[715] Ji bo nojdariya destirozê du rêbazên bijîşkiya gelêrî hene:

- Dibêjin, *'Herin bang li keçikekê ya jî lawikekî dergîstî bikin. Bila were pê lê bike.'* Kesê/a destgirtî/dergîstî sêwî be ango keda bav û diya xwe nexwaribe hîn çêtir e. Kesê/a ku destê wî/ê xirtikî bûye, destê xwe li cihekî rast datîne. Destgirtî, navê destgirtiya xwe dibêje û pê li zendê kesê/a nexweş dike. Ew yek sê caran dubare dibe. Wisa tê bawerkirin ku heta roja din destê wan dê baş bibe.[716]

- Destê xirtikî girêdidin û heta du-sê rojan venakin. Di vê navberê de destê ku destirozî bûye naye şûştin. Piştî du sê rojan pêçeka dest vedikin û jiyana xwe ya rojane didomînin.[717]

- Destê ku destirozî bûye, bi sabûnê û ava germ dişon û mist didin. Piştre bi paçikekî yan destmalekê girêdidin. Heta ku baş bibe wî destî naxebitînin.[718]

- Bi hinek rûnê zeytê destê destirozî mist didin û piştre girêdidin, heta sibehê girêdayî dimîne.[719]

---

mış Yüksek Lisans Tezi), Bozok Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı ABD, Yozgat 2013.

715 Jêder: 5, 12, 16, 17.

716 Jêder: 1, 4, 5, 8, 153, 161.

717 Jêder: 4, 7, 19, 21.

718 Jêder: 11, 15, 18, 27, 36, 37, 40.

719 Jêder: 45, 80, 87, 88, 101, 102, 145.

## Sorik

Di lêkolînên zanistî de, hatiye diyarkirin ku sorik, di her temenî de rû dide, lêbelê herî zêde li zarokên temenê wan di navbera 3 heta 12 salan de peyda dibe.[720] Ji ber vê yekê jî wekî nexweşiyek vegir a serdema zarokatiyê tê zanîn. Kêm caran li kesên naşin û navsere peyda dibe.[721]

Nîşanên vê nexweşiyê yên sereke pizrikên sor, kuxik, sincirandina laş, bêhalî û xur e. Malbat û hekîm hewl didin sinciran-dina laşê (arê can) nexweş kêm bikin. Heger zarok berî ku bi sorika bikeve parzaya wê li xwe xistibe, nexweşîn di nav çend rojan de xwe bi xwe derbas dibe.[722]

Sorik, pizrikên sor in, di jiyana mirovan de, hema bêje di her kesî/ê de carekê be jî derdikevin. Nexweşîna sorikan, niha bi xêra parzaya sorikê bi hêsanî baş dibe. Lêbelê heger tevdîrên pêwîst neyên girtin dibe sedema astengiyên kutbûnê heta mirina zarokan. Wek mînak, li gorî daneyên Saziya Tenduristî ya Cîhanê, di sala 2018an de li deverên dinyayê yên cihê 142 hezar kesan ji ber vê nexweşiyê jiyana xwe ji dest dane. Temenê piraniya van kesan 5 salan kêmtir e.[723] Heger mirov di dema xwe de bi parza bûbe, bi dermanan jî bê dermanan jî mirov baş dibe. Digel vê yekê jî sorik, nexweşiyeke wisa vegir e ku di demeke kin de derbasî kesên din jî dibe. Sorik, piranî li dibistanan belav dibe. Lewra, li dibistanan gelek zarok nêzîkî hevdu rûdinin û bi hev re temasê dikin.

Li gorî daneyên ku ji jêderan hatine wergirtin, li herêma Semsûrê, heta ku parzaya sorikan hatiye û zarok hatine parzakirin, gelek zarok ji ber sorikan mirine. Li her gundî çend malbatên ku zarokên wan bûne qurbaniyên sorikan hene. Ev nexweşî wekî ku li jor jî hatiye diyarkirin, bêtir wekî nexweşiya

720 Ahmet Rıfat Örmeci, "Çocuklarda Enfeksiyon Hastalıklarının Sıklığı", *Türkiye Klinikleri J Pediatr Dergisi*, 1999; 8 (1): 29.

721 Nura Şanê, "Qenckirina Nexweşiyan Bi dermanên Kurmancî", http:krd.riataza.com. (15.07.2018).

722 Jêder: 3, 10, 19, 21, 33.

723 DSÖ 2018 Kızamık Raporu, https://tr.euronews.com/2019/12/06/dunya-saglik-orgutu-gecen-yil-140-bin-kisi-kizamik-nedeniyle-oldu. (12.12. 2019).

zarokatiyê tê zanîn. Wisa tê bawerkirin ku ev nexweşî çiqas di temenekî biçûk de bê derbaskirin xeternakiya wê jî ewqas kêm dibe. Ji ber vê baweriyê jî xeletiyên gelek xeternak hatine kirin. Wek mînak, dema zarokek ji ber sorikan nexweş ketiye, ji canê wê/wî qalik û pûlikên wan sorik û pizrikan berhev kirine û bi canê zarokên sax dane.[724]

Taybetiya vê nexweşiyê ew e ku her devera bedena mirovan sorikên wekî pizrikan dertên. Ji ber rengê wan pizrûkan ji vê nexweşiyê re "sorik" dibêjin. Ew pizrik ji ser zik dest pê dikin û heta nav çavên mirovan û nav porê mirovan didin ber xwe. Bi sorikan re canê zarokan germ dibe. Ew kesê/a ku carekê bi sorikan ketibe êdî careke din bi vê nexweşiyê nakeve. Li gorî bawerî û zanîna civakê, ji sorika herî xetere re *"mîrê sorikan"* tê gotin. Ew sorik di qirika zarokan de dertê û bêhna zarokan diçikîne. Mirov pê dimirin.[725]

Di roja îro de gel hişyar bûye û zarok di dema xwe de têne parzakirin. Berê derbarê sorikan û nojdariya wan de gelek pêkanînên bijîşkiya gelêrî hebûne. Di vê mijarê de hin raman û serpêhatiyên jêderan weha ne:

> "Wextê ku kurik bi sorika diketin, digotin bira serma lê nekeve; germ bigrin bira sorik zû lê bidin der. Ku qismetê wan hewûya nadimirin."[726]

- Laşê zarokê ku bi sorika ketiye nixumandine û germ hiştine. Mebest ew e ku sorik zûtirîn derkevin û pêvajo di demeke kin de biqede.

> "Sewê ku sorik zarok kêm biwin û vemirin gerek parêzê bigirin. Xarinên mîna hêkan û nîskan nedidan kurikan. Av jî nedidan kurikan. Li şûna avê şerbeta mot bi kurikan didan vexartin. Mast î sewê vê nexweşiyê î rind e, gerek mêst bixwin.[727]

- Ji bo ku sorik vemirin parêzê pêşniyar dikin: Xurekên wekî

724 Jêder: 57, 74, 79, 155, 163.
725 Jêder: 1, 7, 26, 31, 46, 52, 94, 97, 116, 128, 140, 144.
726 Jêder: 15.
727 Jêder: 4.

hêk, rûn, nîk û hwd. nadin nexweşan. Avê nadinê, li dewsa avê şerbeta dims didin zarokan. Mast bi wan didin xwarin.

> "Sewê mîrî sorika, digotin hêka medinê, avê medinê. Şîraniyê bidinê. Heta nav çavan jî sorik derdiketin."[728]

Ji bo çareseriya vê nexweşiyê hin pêkanînên rast jî hene. Zarokan li ber siyê dihêlin. Heta ji destê malbatan tê nahêlin ku zarok derkeve ber tavê. Heger zivistan be sobeyê zêde vênaxin. Lewra li gorî baweriyê û tecrûbeya civakê di germê de sorik zêde dibin.

> "Kurikî ku bi sorika ketiye nadin ber germê û royê. Heta ku kurik li wê nexweşiyê pak bûye avê nadinê. Me şerbeta mot jî dida wan."[729]

Wekî ku ji agahiyên jêderan jî tê fêmkirin, di mijara nojdariya nexweşîna sorikan de gelek nakokî hene. Hin kes, hewl didin ku germa laşê zarokan zêde bibe ji bo vê yekê jî zarokan di hawirdorên germ de dihêlin. Hin kes jî berevajî vê pêkanînê zarokan didin ber siye û nahêlin ku derkevin ber tavê. Her weha rêbazeke gelekî xetere jî ew e ku di serdema nexweşiya sorikan de zarok birçî û bêav ango tî dihêlin.[730]

Li herêma Semsûrê derbarê sorikan de gotineke weha heye. Dibêjin:

"Sorik; di sê rojan de dertên, sê rojan diherin diyarê mirinê, sê rojan de jî vedimirin."

Li gorî vê baweriyê, pêvajoya nexweşîna sorikan ji serî heta dawiyê neh rojan diajo.

Nojdariya sorikan bi parzayê dibe. Digel vê yekê, di sorikan de piranî diyardeyên semptomatik xuya dibin. Wek mînak, germa can zêde be. Di roja îro de, gel serî li bijîşkiya nûjen dide. Bijîşk, ji bo ku germa laşî kêm bikin dermanan pêşniyar dikin. Heger nexweş bêhal bin vîtamînan bi kar tînin. Heger kuxik hebe, laş

728 Jêder: 153.
729 Jêder:7.
730 Jêder: 3, 4, 48, 54, 61, 69, 114.

bixure bijîşk li gorî wan daneyan dermanan pêşniyar dikin. Armanc ew e ku nexweşî bi sivikî bê derbaskirin. Di pêvajoya nexweşiyê de zarokan tecrîd dikin. Bi taybetî, nahêlin ku nêzîkî jinên ducanî û zarokên ku berê sorik derbas nekirine bibin. Lewra ji bo her du gruban jî xetereya vegirtina nexweşînê heye.[731]

## Tirs

Tirs jî wekî hestên din hesteke xwezayî ye. Mirov ji ber gelek tiştan ditirse û gelek cureyên tirsê hene: Tirsa ji mirovekî, ji lawirekî, ji dengekî, ji bêdengiyê û hwd. Car caran mirov ji ramanên xwe û xeyalan jî ditirse. Kesekî dewlemend dibe ku ji windakirina mal û milkê xwe bitirse û hwd. Dayikek ji nexweşketina zarokên xwe ditirse, xortek ji dûrketina hezkiriya xwe û hwd. Lêbelê tirsa herî mezin tirsa mirinê ye. Tirsa ji mirinê, li gorî çand û baweriyên civakan diguherin. Lêkolînên ku hatine kirin diyar dikin ku di nav civakên Rojhilatî de tirsa ji mirinê kêmtir e.[732]

Mirov, ji bo ku hesta tirsê têk bibin ango ji bandora tirsê xelas bibin ji berê heta niha ketine nava gelek hewldanan. Li gorî hêz û rêjeya tirsê, berteka kesê/a tirsiyayî, bandora tirsê ya li ser derûnî û laşê kesê/a tirsiyayî pêkanînên bijîşkiya gelêrî jî diguherin:

- Kesek ji ber tiştekî ku qet hêvî nake biqewime ji nişka ve ditirse û diqîre. Di vê rewşê de kevneşopiya herî berfireh ya ku tê bikaranîn, vexwarina avê ye. Kesên derdorê tasek av didin destê kesê/a ku tirsiyaye. Ew jî hinek av vedixwe, heta ku bi ser hişê xwe ve tê. Heger kesê/a tirsiyayî ji ber tirsê bilerize kesên derdorê avê dixin devê wî/ê, heta ku çend qurtan vedixwe.[733]

- Heger bandora tirsê di demeke kin de li ser kesê/a tirsiyayî xweveber ranebe, hinek xwê û ceh dixin nava qaşilkê pîvaza sor û di dor serê kesê/a tirsiyayî re digerînin. Piştre wê xwê, ceh û qaşilkê pîvazê diavêjin nav agir. Wisa tê bawerkirin ku

731 Sezen Özkök, Kızamık, Kızamıkçık, Kabakulak, Suçiçeği ve Aşılamalarında Güncel Durum, *Okmeydanı Tıp Dergisi*, 2016; 32 (Ek sayı): 20-23.

732 Gonca Karakuş, Zehra Öztürk, Lut Tamam, "Ölüm ve Ölüm Kaygısı", *Arşiv Kaynak Tarama Dergisi*, 2012; 21 (1): 65.

733 Jêder: 18, 20, 21, 25, 27, 30.

ew xwê, ceh û qaşilkê pîvazê tirsê ji laşê mirov digrin. Tirs jî bi wan têkberan re dişewite.[734]

- Hin kes jî dibêjin, xwê û pîvaz dijminê teyrê xêw yê tirsê ne. Cihê ku xwê û pîvaz têkeve cih ji wan re namîne.[735]

- Li gundê Qirxliyê ji xeynî pîvaz, xwê û cehê heger li mal hebe çend heb hermelê[736] jî dişewitînin. Heger tirs ji ber çavên xerab (çavînîkirinê) be, hermel dê bandora wan çavan bikuje. Jêder Ayşe Aslan, bi dehan caran ev rêbaza ceribandiye:

> "Sewê tirsê ûzalikê dişewitînim. Xwê û ceh û pîvazê di dor serê wan digerînim û davêm nav êr. Sewê ku netirsin, xof bireve."[737]

- Heger kesê/a tirsiyayî ji ser hişê xwe çûbe ango bêxût ketibe, pîvazeke hişk tînin, kulmekê lê dixin, dişkînin, da ku bêhna wê zêde bibe. Wê pîvazê didin ber pozê kesê/a bêxût ketiye. Kesê/a bêxût bi bêhna pîvazê bi ser hişê xwe ve tê.[738]

- Heger kesa ku ditirse jina zêristanî be, heta çil rojî wê tenê nahêlin. Dema ku radizê das, kêr û hwd. tiştekî hesinî didin ber serê wê. Dema ku hişyar bû û li ser xwe geriya, derziyekê bi kûm ango kincê wê ve diçikînin. Wisa tê bawerkirin ku cin, teyr û tiştên din ên xirab ji hesin ditirsin û nikarin nêzîkî jina zêristanî û zarokê/a wê bikujin.[739]

- Sedema tirsê dengekî zêde bilind be û kesê tirsiyayî di cihê xwe de ziq (mat) mabe, rengê wî/ê zer bûbe ji nişka ve şiqameke bi tîn (hişk-bi bandor) li rûyê wî/ê didin.

> "Vî lawkî me erebe dajot. Bir li bin guhê tahtkî xist. Mi mêzi kir ku çav li sêri mîna tasa bûne û î ziq sikiniye. Gûnî xa zer bûye. Mi go cîng û sîllek li bin guhê wî xist. Çîk li çavan avêt. Tirs mirs lê nema. Em daketinî, heta ku motor hat. Me ereba

---

734 Jêder: 1, 4, 18, 19, 24, 31, 34, 47.

735 Jêder: 2, 3, 5, 8, 9.

736 **Hermel:** Ûzalik, cureyekî giha ye. Berê wê wekî nokan e lê ji nokan siviktir e. Dema ku dişewite bêhn dide.

737 Jêder: 18.

738 Jêder: 19, 57, 73.

739 Jêder: 8, 14, 22, 27, 28, 37, 38, 140, 141.

xa pêxist û anî senayiyê"[740]

- Dema ku bandora tirsê kêm be, kesê/a tirsiyayî tiliya xwe ya girikê dixe bin her du diranên xwe yên pêşî û ber bi jor ve dahf dide.[741]

Di her çandê de li hemberî mirinê hin bawerî, helwest, hewldan û tevgerîn hene. Tê bawerkirin ku ev bawerî, helwest, hewldan û tevger fikara mirinê ya li ser kesan dişkîne. Lêkolînên hatine kirin nîşan didin ku di her çandê de bilêvkirina mirinê û wateya lê tê bawerkirin cihê ye. Hin çand hene fikara mirinê siviktir dikin, hin çand jî mirovan bi tirsa ji mirinê mezin dikin. Baweriya bi olekê hinekî aramiyê dide mirovan. Wek mînak, Îslamiyet, Xiristiyanî, Cihûtî û baweriyên din ên yekxwedayî, mirinê wekî destpêka jiyana bêdawî dipejirînin. Ew yek jî dike û mirov bandora tirsa mirinê hinekî kêm bibe.

## Guhêş (Êşa Guh)

Li gorî agahiyên ku di hevdîtinan de bi dest ketine, sedema nexweşîna guhêşê baş nayê zanîn. Nexweşîneke êşbar û dûdirêj e. Tê gotin, dibe ku sedema guhêşê kêmgirtina guh be. Kêmgirtina guhê navîn (kerikê guh), bi awayekî dîtir akut otitis media; li paş perdeha guh e, hewa tê de ye û piranî kulbûyîna wê ya ji ber bakterî yan jî wîrûsekê guhêş pêk tê. Di dema enfeksiyonê de kêm digire û ji ber vê kêmgirtina guhê navîn mirov ji ber êşa guh tengezar dibin. Heger guhêş neyê dermankirin, piştî demekê dibe ku bibe sedema kerrbûnê.[742] Li herêma Semsûrê, ji bo ku êşa guh ji holê bê rakirin hin pêkanîn û dermanên Kurmancî hene:

- Heger kesê/a ku guhê wî/ê diêşe zarok be, dayik ji şîrê xwe hinekî diguvêşe kevçiyekî çayê û her guhekî du-sê dilopan dixê. Vê yekê heta du-sê rojan sibeh û êvarê dubare dike. Bawerî ew e ku şîrê dayikê derman e.[743]

740 Jêder: 107.

741 Jêder: 8, 17, 26, 44, 59, 83, 90, 107.

742 Murat Koçyiğit, Safiye Giran Örtekin, Taliye Çakabay, "Otitis Media, Sınıflandırma ve Tedaviye Yaklaşım Prensipleri", İKSST Derg 2016; 8 (2): 65-70.

743 Jêder: 1, 12, 19, 20.

- Hin dayik jî pirtîskek[744] xwê jî tevli şîrê xwe dikin û dixin guhê zarokan.[745]

- Heger kesê/a ku guhê wî/ê diêşe mezin be, derman jî diguhere. Ji dewsa şîrê dayikê, şîrê pez û dewaran tê bikaranîn.[746]

> "Gotin fişqê dêwêr (ê ker û bergîran) tevli şîr bikin, biparzînin û bikin guhê xa. Mi hûnga kir. Hen bi hen ez rehet bûm. Hema pêçiyê min mor bibûn."[747]

- Fişqa ker an jî bergîrekî ya zuha tînin. Hinek şîr jî tevlê dikin û diparzînin. Piştre wî şîrî diçilkînin (diniqutînin) nav guhê ku diêşe.

- Pîvaza hişk dixin bin agir û dipêjîn. Piştî ku pijiya, wê spî dikin (qaşûr dikin) û hinekî rûn tevlê dikin. Wê pîvazê li ser paçikekî paqij pahn dikin û didin ser guhê ku diêşe.

> "Guhê min diêşiya, min pîvaz keland, nava wê derxist, hinekî rûn kir û xist guhê xa."[748]

Li Çorumê jî ji bo êşa guh, şîrê dayikê dixin guhê zarokan û her weha cêniyek goştê kîvroşkan dixin nav guhê ku diêşe, sîrê dikutin didin ber guh.[749]

## Qolincîbûn

Di nav gel de ji bo êşa sîng û navmilê ya ji nişka ve û şidandina li ser hev "*qolincîbûn*" tê gotin. Navê wê yî zanistî Fîbromiyaljî (FM) ye. Êşa masûlkeyan û sendromeke êşbar a kronîk e. Qolinc, bi piranî êşa masûlkeyên li serikê hestiyên bêrokê ne.[750] Pêşî

744 **Pirtîsk:** Mîqdara herî piçûk ku mirov karibe serê tiliyên girikê û eşhedê rake.

745 Jêder: 5, 8, 26, 30.

746 Jêder: 1, 12, 19, 20.

747 Jêder: 27.

748 Jêder: 18.

749 Sümeyra Tozlu, Tozlu, Sümeyra. "Çorum İli Halk İnançları ve Halk Hekimliği." (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), *Artvin Çoruh Üniversitesi SBE*, Artvin 2017, r. 69.

750 Bilge Evren, Cüneyt Evren, Aslıhan Yapıcı, Mine Hoşafçı Güler, "Fibrom-

sînga mirov diêşe û dawiyê ev êş diavêje nav her du milan. Di dema qolincîbûnê de bêhna mirov bi zorê dertê yanî mirov dikeve hev.[751] Li gor hin jêderan qolîncîbûn qeyrana dilî ye.[752] Lêbelê ji ber ku ne nexweşîneke kujende ye, ne qeyrana dil lê dişibe nexweşîneke tamaran an jî buxriya (qiramp) madeyê. Piranî kesên mezin qolincî dibin. Ji mînakên heyî jî diyar e ku piranî kesên çil salî û di ser çilî re qolincî dibin. Di bijîşkiya gelêrî ya herêma Semsûrê de, ji bo başkirina nexweşîna qolincîbûnê, devera ku diêşe tê hicamkirin an jî bi cilêtê hêdika tê xêzkirin da ku xwîn jê bê.[753]

Dema ku bi carekê ve êş dikeve dilê mirovan, wekî buxriyekê (sancî-skênc) dilê mirov diguvêşe dibêjin, *"qolincî bûye."* Êş li ser sîng digere û heta ku xwe diavêje qolincan. Wisa dibe ku mirov nikare bi hêsanî bêhna xwe bide û bistîne.

> "Sewê qolincîbûnê, ê ku zanin kêr dikir û bardax lê dixistin. Xûna reş dikişand. Siftê pozî cîlatê lêdixistin û xûn dikirin. Paşê jî bardax lê dixistin."[754]
> "Kêr dikirin, qolinc, ê mîna nexweşiya qêlb e. Berê qelb nizanibûn, digotin qolincî bûye."[755]

Ji bo nojdariya qolincîbûnê dermanê Kurmancî hicam ango bi penaseya herêmê, bardax e. Ji bo hicamê, kesê/a nexweş xwe li ser dev û rûyan dirêj dike. Hekîmê dermanên Kurmancî, qolincên nexweş serpas[756] dike. Hekîm, bi pozê kêrê ango cîlatê cihê ku êş ketiyê hêdika dibire, heta ku hinek xwîn pê bikeve. Piştre perçeyek kaxiz agir pê dixe û diavêje hundirê bardaxa/qedeha çayê. Qedehê berjêr dike û dide ser cihê ku xwîn kiriye. Heta ew agir bivemire, xwîna reş ya piştê wekî ku bimêje dikişe

yalji Hastalarında Ağrı Şiddeti ile Psikiyatrik Belirtiler Arasındaki İlişki", *Anadolu Psikiyatri Dergisi*, 2005; 6: r. 70.

751 Jêder: 4, 9, 12.

752 Jêder: 13, 20.

753 Jêder: 2, 5, 14, 54, 75.

754 Jêder: 20.

755 Jêder: 8.

756 **Serpas:** Peyveke resen e. Wate: Servekirin, tazîkirin.

jor. Piştî ku qedeh rakir, bi paçikekî paqij wê xwînê paqij dike. Vê pêkanînê li ser 5-6 deverên nêzîkî hev dubare dike. Piştre nexweş dişîne malê.

Hin kes jî berê bardaxan germ dikin, li cihê ku diêşe (pişt dibe, qolinc dibe, zik û ran dibe) dixin. Ew bardaxa cihê ku dev lê kiriye dikişîne nava xwe. Xwîn li wê herêmê dicive. Piştre bardaxan radikin, wî cihê ku xwîn tê de civiyaye bi cîlatê ango gûzanê xêz dikin. Wê xwîna reş ku dertê bi paçikekî paqij yan pemboyekî paqij dikin. Wisa tê bawerkirin ku bardax ango hicam xwîna qirêj ya nava tamarên mirovan dicivîne. Piştî ku tê xwînkirin, ew xwîna "xerab" tevî êşê ji nava mirov dertê.[757] Hêjayî gotinê ye ku ew pêkanîna bijîşkiya gelêrî her ku diçe belav dibe û di nava tiba nûjen de wekî *"tiba alternatîf"* cihê xwe qewî dike.

Di bijîşkiya gelêrî de nojdariya bi hicamê û zîroyan her diçe berbelavtir dibe. Çend salên dawîn de Wezareta Tenduristiyê ya Tirkiyeyê jî nojdariya bi rêbaza hicamê û zîroyan tevlî nav pergalên nojdariya zanistî kiriye û êdî bijîşk jî van rêbazan bi kar tînin.[758]

## Verişîn

Verişîn bi serê xwe ne nexweşiyek e, tenê encamek e. Verişîn, ji ber gelek sedeman pêk tê. Bi giştî mirov dikare bibêje ku nepejirandina xurekan ya ji aliyê laşê mirovan e. Ango laşê mirov bertekekê nîşan dide, tiştê di nava hûr de davêje derve. Verişîna zêde dibe sedema kêmbûna tansiyonê, xwîdan, betilandin, êşa qirikê û hwd.[759] Verişîna hindik ya piştî mijîna zarokan wek tiştekî asayî tê pejirandin. Lewra, piştî ku zarokan devê xwe ji paşila diya xwe derxist, hinek şîrê qûsiyayî (qetiyayî) tevî hinek gaz ji devê zarokan dertê. Ya rast ev yek tiştekî asayî ye. Him ji ber rewşa tenduristiya zarokan him jî ji ber bayê ku di

757 Jêder: 18, 22, 25, 38, 39, 52.

758 Hüseyin Ayhan, Salih Mollahaliloğlu, "Tıbbi Sülük Tedavisi: Hirudoterapi", *Ankara Med J*, 2018;(1):141-8 DOI:10.17098/amj.409057.

759 Elmas Kasap, Hakan Yüceyar, "Bulantı-Kusma ve Yaklaşım", *Güncel Gastroentroloji*, Manisa Eylül 2009.

dema vexwarina şîr de tevî şîr dadikeve zikê zarokan. Heger zarok wî bayî nava zikê xwe -bi awayekî- dernexe dê zikê wî/ê biêşe. Lêbelê dema ku ew verişîn ji ber nexweşiyekê be rewş xeternak dibe.[760]

Li herêma Semsûrê dema ku zarok vedirişe dayik li gorî tecrûbeyên xwe rewşê dinirxînin û li gorî vê yekê tevdîran digrin:

- Heger verişîn ji ber sermayê be hinek nane yan jî pûngê dikelînin û dilopek lîmon bera nav wê avê didin. Carê bi qasî kevçiyekî çayê bi ser zarok ve dikin. Berî ku riweka nane li herêmê belav bibe tenê pûng dihate bikaranîn. Pûng, di demsala biharê de li ber kanî, çem û rûbaran tê berhevkirin, şûştin û hişkkirin. Piştî ku hişk bû hiltînin û dema ku pêwîst bû wekî çayê tê bikaranîn.

> "Me berê pûnga biharê ku li ber helqa, zixûra, kaniya û ça top dikir, hişk dikir. Ku diwû zivistan me ew dikeland. Sewê ku kurik sermê negrin, venerşin me kevçiyekî çayê bi ser va dikir."[761]

- Heger kesê/a nexweş, bi qasî ku xurekên ji bilî şîr jî bixwe temenmezin be, ji bo ku ji bandora sermayê ji ji holê were rakirin, wek xwarina sereke şorbenîsk û şorbeya mast tê çêkirin û bi wî/wê tê vexwartin.[762]

- Hewl didin ku zarok xwîdanê bide û nexweşînê ji nava xwe biavêje. Ji bo vê yekê jî cilên stûr li wan dikin û hundir germ dikin. Rê nadin ku zarok derkeve derve.[763]

- Heger verişîn ji ber xwarineke nebaş be, jixwe mirov vedirişe, heta ku nava mirov pak bûye. Nexweş xwe dirêj dike û hinekî bêhna xwe dide. Piştî vê yekê xurekên şor ên wekî leblebiyan û xwarinên ku dilê nexweş diçê jê re çêdikin. Piranî xwarinên zuha yên wekî sawar, ecînê têne ceribandin.[764]

- Car caran çi zarok dibin çi jî mezin dibin ji hin xwarinan

760 Jêder: 2, 14, 18, 20, 43, 48.
761 Jêder: 20.
762 Jêder: 68, 87, 135, 140, 143.
763 Jêder: 1, 2, 6, 87.
764 Jêder: 15, 16, 19, 24, 50.

aciz dibin, dilê wan li hev dikeve lê nikarin verişin. Berê di rewşên weha de nexweş tiliya xwe ya eşhedê dixist devê xwe û hewl dida ku verişe. Heger ev rêbaz bi kêr nehata, tiştekî pîs ku dilê mirov jê dixele yê wekî werîs, hefsarê sewalekî, paçikekî gemarî, tiştekî ku qet nayê xwarin û hwd. dixistin devê xwe û heta ku biverişin bi diranê xwe gez dikirin.[765] Bawerî ew bû ku piştî verişînê dê nava mirov pak bibe. Ev pêkanîn jî êdî ji holê rabûye, kesên hişyar û zana heta ji wan tê nahêlin ku nexweş verişe lê heger verişîn zêde çêbûbe jî şilaviyên wekî av, qola, şerbet, xoşav û hwd; xurekên wekî mûz, kartol û xoxan didin nexweşan.

- Carinan jî ava lîmonê û hinek xwê tevli avê dikin û didin nexweşan.[766]

- Berê, piştî pêvedana lawiran (moz, mar, dûvpişk û hwd.) hinek şîr yan dev bi ser nexweş ve dikirin. Bawerî ew bû ku jehra rawiran bi alîkariya şîr û mast dê bibe toraq û derkeve. Di salên dawiyê de hişmendî û zanîna gel ya di vî warî de zêde bûye. Hatiye fêmkirin ku ev pêkanîn jî şaş e. Nojdariyê li wir bihêlin jiyana mirovan bêtir dixe bin xetereyê. Divê di rewşên weha de li gorî rewşa kesê/a nexweş, qeşa/cemedê didin ser devera ku hatiye pêvedan û di zûtirîn demê de serî li nexweşxaneyan didin.[767]

Heger verişîn demeke dirêj bidome, wê gavê jiyana nexweş dikeve bin xetereyê. Wê gavê tirs dikeve dilê nexweş û malbata wî/ê. Êdî li çareseriyên din digerin. Heger derfet hebin kesê/a nexweş dibin nexweşxaneyan.

## Meyasil (Bawesîr)

Xwînîbûna rektal ku nayê kontrolkirin, xur û êşa domdirêj nîşaneyên meyasilê (bawesîr/hemoroîd) ne. Di dema şikandina destmêja mezin de hin deverên maqata nexweş xwînî dibin. Di vê nexweşînê de li derdora maqata kesê/a nexweş kulên wekî

765 Jêder: 1, 2, 6, 87, 95, 99, 100.
766 Jêder: 19, 61, 62, 67, 79.
767 Jêder: 5, 9, 13, 21.

nokan dertên. Devera kul, dixwire, xwîn jê tê. Devera ku meyasil jê hatiye pir diêşe. Mirov nikare li ser xwe rûne û li ser pişta xwe razê.[768] Meyasil, heger neyê dermankirin carinan mirov dikuje.

Sedema meyasilê/bawesîrê baş nayê zanîn. Ji bo çareserkirina meyasilê gelek xwarin, riwek û vexwarin têne ceribandin. Hin xurek jî hene ku divê di pêvajoya nojdariya bawesîrê de neyên xwarin û vexwarin: Xwarinên hişk û tûj ên wekî pîvaz, baharat, îsot, dan û dançîgan.[769]

Hin pêkanînên ji bo nojdariya bawesîrê weha ne:

- Xwarinên nerm ku dehandina (helandin) wan hêsan e, ji nexweş re amade dikin. Lewra damarên maqaê nazik û tenik dibin, divê zor li wan neyê.

> "Rêviyê xa yê mîna dêzi ne. Gerek tiştî nerm bixwin."[770]

- Goştê jûjiyan dipêjînin û didin kesê/a ku ev nexweşîn lê peyda bûye.[771]

- Heger nexweşîn di demsala biharê de peyda bûbe riweka beyanî ya kariyê bi kar tînin. Kariyê, wekî pincarê hûr dikin û tevî hinek av dikelînin. Piştre li ser paçikekî pahn dikin û didin ser kula bawesîrê.

> "Karî, li meyasilê ra ê rind e. Kariyê hûr bikin, bikelînin, li ser paçikî pahn bikin, bidin ser."[772]

Wekî gelek nexweşîn û birînan di nexweşiya meyasilê de jî pîvaz û sabûn bi hev re têne bi kar anîn. Divê sabûn "xaşil" be. Ango nû be, qet nehatibe şixulandin.

- Sabûnê wekî tozê hûr dikin û dixin nav sabûnê. Piştre pîvaz di nav agir de tê biraştin. Ji bo ku pîvaz di nav agir de neşewite,

---

768 Fikret Ezberci, Fatih Yüzbaşıoğlu, "Hemoroidal Hastalıkta Tedavi Yöntemleri", *Türkiye Klinikleri J Med Sci*, 2008; 28, r. 183.

769 Jêder: 41, 42, 45, 51, 53.

**Dan û dançîg**: Li herêma Semsûrê "dan" sawar e û "dançîg" jî qisir e. Lêbelê "dan û dançîg" navê giştî yê şîvên bi sawar/genim e.

770 Jêder: 13.

771 Jêder: 34.

772 Jêder: 7.

paçikekî şil dikin û pîvazê dixin nav wî paçikî û wisa dixin binê agir. Pîvaza biraştî ku sabûna hûr di nav de ye, êvarê didin ser birîna meyasilê û heta sibehê li ser dihêlin. Pîvaz êşê kêm dike, birînê dikewîne û heger kêm-nêm (îltîhap) di nav kulê de hebe wê kulê der dike.[773] Jêder Ayşe, ku bi dermanên gelek nexweşiyan dizane û hîn jî li gundê xwe û gundên derdorê wekî "hekîma Kurmancî" tê nasîn di mijara meyasilê de weha dibêje:

> "Ku serê meyasilê derkete derva, serê pîzavikê bibire. Hewkê kûr bibire. Sawûnik xaşil ûne rêş bike, wê tozê sawûnê bike devê wê kortê pîvazê. Pîzavê bike nav paçkî û bajo firinê, bira rind bibjire. Paşê wî paçî rake. Wê pîvazê bide ser kulê meyasilê. Paçkî bide ser, tiştkî giran î mîna êkmerdiyekê/mînderekê jî helbisêre û piştê xa bide dîwêr. Heta siwê hunga biskine. Kul ê der biwe."[774]

- Hekîma Kurmancî Ayşe, berî ku pîvazê bixe bin agir, bi kêrê di nava pîvazê de kortekê vedike û sabûna ku bi kêrê yan xûştireyê (rende) hûr kiriye dixe nav pîvazê. Dîsa devê wê pîvazê digre û paçikekî şil lê dipêçe û wisa dixe bin tirafa agir. Piştî ku pîvaz pijiya, ji nav paçik derdixe, qaşûr dike û hinekî sar dike. Piştre li ser paçikekî paqij radixe û dide ser meyasilê. Şevekê li ser dihêle. Ev rêbaz kêma meyasilê paqij dike û birînê baş dike.

Mela Mihemed Qûtup ango Melayê Erwasî, di sedsala 17an de ji bo dermankirina bawesîrê macûna ji hingûv, zencefîl û sîr çêkirî pêşniyar dike. Li gorî ravekirina wî, divê nexweşê meyasilê/bawesîrê sîrê û zencefîlê di nav hev de bikute û tevî hingûv bike. Wekî macûnekê amade bike û bixwe.[775]

- Hekîma dermanên Kurmancî Ayşe Bektaş ya 96 salî, ji bo meyasilê reçeteyeke din pêşniyar dike. Li gorî wê, dermanê meyasilê koka kariyê û hingûv e. Heger mirov çend rojan li ser hev, bi qasî neynûkekê koka kariyê bixwe û bi ser de jî kevçiyek

---

773 Jêder: 2, 5, 7, 16, 17, 18.

774 Jêder: 18.

775 Mela Mihemed Qûtup, *Dermanên Bijîşkiya Gelêrî*, M. Reşîd Irgat (Wer.), Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2000, r. 32.

hingûv bixwe dê meyasil ji holê rabe.[776]

Di vê pêkanîna li jor de tiştê balkêş ew e ku di dermankirina meyasilê de ji nakokiyan sûd tê wergirtin. Hingûv çiqas şêrîn be karî jî ewqasî tahl e.

- Giyayê hewês (pelhewês/hefttûzik), çiloyê tûyan û çiloyên titûnê (her yek bi serê xwe tê bikaranîn) dişon û didin ser birînê.[777]

- Car caran jî hinek ava kelandî berdidin ser bilxurê kutilkan. Wekî hevîr distrên û didin ser meyasilê. Ew hevîra hemû kirêtiya nav kulê dikişîne û janê dibire.[778]

## Berşoşkî

Di berşoşkiyê yan jî refluyê de, bêyî ku made bihilqe yan jî verişîn çêbibe, aveke tirş û tahl ji madeyê radibe, heta ber qirikê tê û dîsa vedigere. Piranî gava hevsengiya asîta di madeyê de xera bibe; di dema meraq, xem û stresê de; piştî vexwarina mey, araq û hwd. berşoşkî çêdibe. Ji ber vê çendê, kesên berşoşkî ku dikuxin, devê van tirş û tahl dibe, qirika wan dişewite; reng û dengê kesê/a berşoşkî diguhere, madeya wan dişewite.

Berşoşkî, nexweşîneke pergala dehandinê[779] ye. Dema ku mirov xwarinê dixwe hin xwarin li hev nayên û xwarin di zikê meriv tirş dibin. Ew ava tirş û tahl (asîda madeyê) ku di nav hûrê meriv de ye wekî kaniyekê ji bin ve dibiliqe/radibe û heta qirik û devê mirov tê. Helbet herkes rewşa tenduristiya wan cihê ye. Ji ber vê yekê jî ew nayê wê wateyê ku dê herkes berşoşkî bibe.[780]

Li gorî jêderan gelek sedemên berşoşkîbûnê hene:

- Bi qasî ku ji jêderan hatiye fêmkirin ku berşoşkî, bêtir ji ber xwarinên bi biharat, tirş, tûj û rohn pêk tê. Dema ku mirov bi zikê birçî van xwarinên bi vî rengî bixwe gumana berşoşkîbûnê zêde dibe.[781]

776 Jêder: 18.

777 Jêder: 18, 89, 129, 136.

778 Jêder: 136.

779 **Dehandin**: Pêvajoya bikaranîna xurekan ya ji aliyê laş ve/mehandin.

780 Jêder: 5, 13, 17, 20, 24

781 Jêder: 12, 20, 48, 93, 111, 146.

- Xwarinên ku dehandin û helandina wan zehmet e jî mirov aciz dikin û dibin sedema berşoşkiyê. Razana bi ser xwarinê de jî gelek caran rê li ber berşoşkiyê vedike.[782]

- Şilavên bi asît yên wekî ava madenan, qola, qazoz û hwd. jî dibin sedema berşoşkiyê.[783]

- Kesên ku madeyan/hûr wan kul e, gumana berşoşkîbûna wan zêde ye.[784]

Bi xebatên zanistî jî hatiye peyitandin ku pirsgirêkên derûnî jî bandoreke neyînî li ser nexweşîna berşoşkiyê dikin. Ew kesên ku zêde xembar in, gumana berşoşkîbûna wan zêdetir e. Dermanê berşoşkiyê di nav gel de wekî parêz û xwarina kêm tê zanîn. Heger mirov hay ji xwe hebe ku bê ka berşoşkî ji ber çi çêdibe dê li gorî vê yekê tevdîra xwe jî bigre.

## Qewardan

Qewar, piranî di dest û lingan de dertê. Ji ber tahde û zorlêkirinê çêdibe. Pirsgirêkeke çermî û êşbar e. Gava çermê laş dixwaze xwe ji rewşên neyînî biparêze wekî bertekekê qewar çêdibe.[785] Bi taybetî li devera bihestî ya ling a li pêlavê dikeve çêdibe. Lêbelê di destan û deverên ku tahde li wan tê kirin de jî çêdibe. Heger dest, ling an jî devereke din a laş bê êşandin, ew dever pêşî sor dibe; heger tahde û zora li ser wê deverê bidome qewar çêdibe. Çerm av digre, piştî demekê jî hişk dibe û tim diêşe.

Qewar, piranî li ser dest û lingên kesên ku bi xamî karê çandiniyê dikin û karkerên ku tevir û bêran dixebitînin çêdibe. Di lingên kesên ku karê çêkirina avahiyan de dixebitin û pêlavên çewt dixin lingên xwe tim çêdibe.

Ji bo nojdariya qewaran, hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî

782 Jêder: 15, 19, 30, 45, 81, 94.

783 Jêder: 9, 34, 58, 70, 151, 152, 160.

784 Jêder: 18, 20, 27, 30, 81, 85, 97, 146.

785 "Nasır Nedir, Nasıl Tedavi Edilir?", https://www.medikalakademi.com.tr/nasir-nedir-neden-olur-ayak-nasiri-nasil-gecer-belirtileri-ve-tedavisi/ (22.12.2018).

weha ne:

- Ji bo ku dest û ling qewar nedin, dest û lingan hine dikin. Hine çerm dest û lingan dişidîne û hişk dike.[786]

- Heger qewar li ling hatibe, solê diguherînin. Paçikekî nerm ango hinek pembo dixin bin lingê xwe.[787]

- Devera ku qewar daye, dixin nav ava germ û mist didin. Piştre hinek rûn tê didin. Heger rûn tunebe bi şemedanekî devera ku qewar daye girêdidin. Heger hebe melhemê tê didin.[788]

- Qewer li destan hatibe, rûn dikin, hine dikin, lepikan dixin destê xwe, heta ji wan hatiye wî destî bi kar naynin. Divê qewar neyên teqandin; divê xwe bi xwe rihet bibin.[789]

### Kuxik

Kuxik, nerihetiyên hilmijînê jî di nav de, elameteke hevpar a gelek nexweşînan e. Ji bo nojdariyeke kartêker, divê elametên ku bi kuxikê re derdikevin holê baş bên nirxandin. Kuxik, piranî ji ber sermagirtinê pêk tê. Lêbelê dibe ku nîşana nexweşiyên din be jî.[790] Li herêma Semsûrê li gorî asta kuxikê, domdirêjiya wê û hwd. pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî jî diguherin:

> "Desmalikê ya jî bervangekê germ dikin û didin ser gewriyê xa."[791]
> "Hêngiv tevli şîrî germ dikin û vedixwin."[792]
> "Hîlorê dikelinin, diparzînin. Royê sê-çar cara vedixwin."[793]
> "Çilûyê bihikan dikelinin û avê wê vedixwin."[794]

786 Jêder: 1, 8, 18, 77, 82, 119, 153.
787 Jêder: 1, 2, 3, 4, 5, 13, 19.
788 Jêder: 4, 10, 17, 36, 55, 63.
789 Jêder: 7, 45, 59, 70, 71, 90, 105.
790 "Öksürük nedir?" https://www.memorial.com.tr/saglik-rehberleri/oksurugu-sesinden-ve-suresinden-tanimak-mumkun/ (14.10.2018).
791 Jêder: 20.
792 Jêder: 40.
793 Jêder: 45
794 Jêder: 62

"Çayê çiyê mîna çayê dem digrin û vedixwin."[795]
"Şîlanan dikelînin û avê wê vedixwin."[796]
"Hewik qerebîber û hêngiv tevli şîrî germ dikin û vedixwin."[797]
"Çiçekmast û tolikê cihê dikelînin û avê wan vedixwin."[798]

Pêşgirê germ dikin û didin ser sînga xwe. Şîr, germ dikin û hinek hingûv tevlê dikin û vedixwin. Hîro dikelînin, diparzînin. Rojê çend caran bi germî vedixwin. Pelên bîhokan dikelînin û ava wê vedixwin. Çaya çiyê, wekî çayê dema wê digrin û vedixwin. Şîlanê dikelînin û ava wê vedixwin. Hinek qerebîber û hingûv tevî şîrê germ dikin û vedixwin. Çîçekmast, tolik û hwd. (her yekê bi serê xwe) dikelînin û ava wan vedixwin.

Li aliyê din ve baweriyên batil ên ji bo kuxikê jî hene. Berê, dema ku kesek bi kuxikê diket, yek li kerekî reş siwar dibû û zarokê/a ku dikuxe di bin zikê kerê re derbas dibû. Digotin, *"Ê kuxika wî/ê bisekine."*[799]

Li hin herêmên Anadolê jî ji bo kuxikê riwekan bi kar tînin. Gelek pêkanînên nojdariya kuxikê dişibin yên herêma Semsûrê. Bi axlemûr, qeresî, bistiyên wîşneyan, qalikên hinaran, beybûn, giyagewrik (çaya çiyê) çay tê çêkirin. Rojê 2-3 qedeh ji vê çayê tê vexwarin û car heye serê sibehê berî xurîniyê, car heye êvarî berî razanê û car heye jî piştî nîvro tê pêşniyarkirin.[800] Lêbelê dibe ku kuxik ji ber nexweşînên xedar ên wekî tuberkuloz (werem), penceşêra pişikê hwd. be jî. Di rewşên weha de demildest divê mirov biçe nexweşxaneyê.

## Şeliqîn

Dîaper dermatît ku di nav gel de wekî şeliqînê tê zanîn, ne-

---

795 Jêder: 9.
796 Jêder: 38.
797 Jêder: 25, 30.
798 Jêder: 54.
799 Jêder: 5, 17, 26, 46, 50, 52, 57, 88.
800 Sevgi Şar, "İç Anadolu Bölgesi Halk İlaçları", *III. Milletlerarası Türk Folklor Kongresi Bildirileri, IV. Cilt, Gelenek, Görenek, İnançlar*, Başbakanlık Basımevi, Ankara 1987, r. 371-380.

rihetiyeke çermî ye. Ji ber ritubet û kêmgirtina li derdora nav şeqan/ranan, binçengan û deverên zayendî çêdibe.[801]

Dema ku zarok çêdibin û pê ve, ji bo ku zarok neşeliqin dest bi tevdîran tê kirin. Tevdîra pêşî xwêkirin e. Dema ku zarok çêbû her devera laşê zarok xwê dikin da ku neşeliqe. Wisa tê bawerkirin ku xwê laşê zarokan dişidîne, çermê wan zuha dike. Ew jî rê li ber şeliqînê digre.[802]

Li herêmê, kevneşopiyeke girîng jî pêçana zarokan e. Piştî ku zarok hate şûştin dest pê dikin û zarokan dipêçin, dikin nav pêçekê. Zarok demeke dirêj di pêçekê de dimînin. Bi awayekî xwezayî xwîdan didin. Gelek caran jî bi xwe de mîz dikin; binê wan şil dimîne. Ew jî rê li ber şeliqîna zarokan vedike. Dema ku dişeliqin laşê zarokan sor dibe, nazik dibe û diêşe. Ji ber vê êşê digirîn. Yek ji pêkanîna ku dijî şeliqînê tê meşandin ax e. Axa gewr ku nabe herî, didin bin zarokan. Heger zivistan be, wê axê germ dikin, zuha dikin piştre didin bin zarokan. Gava ax şil dibe, tê guherandin. Bi vî awayî nahêlin mîz bigihêje laş.[803]

Havînan hinek axa paqij diparzînin, axa wekî xewarê radikin. Carê hinekê diavêjin cihê şeliqî. Ku tiştek tunebe hinek kurika qurmê darên riziyayî diavêjin cihê şeliqî. Bi vî awayî devera şeliqandî tê ziwakirin û nahêle çerm li çerm bikeve.[804]

> "Zivistanî dest sermê, havînê jî dest îş û kêr me firset nedidî ku tim bin kurika vekinî. Fiqara di nav mîzê da diman, dişeliqîn. Me bin wan vedikir ku mîna kezewê sor bûne. Me ya dişûşt, ya hewk ax davêt bini. Êkcara jî li çolê xiwarê darê rizî me direşandê."[805]

Ku derfet hebe zarokan dişon û pê ve hinek rûnê zeytê di cihê şeliqî didin. Heger kesê ku şeliqî mezin be, devera ku şeliqiye bi av û sabûnê baş dişon, zelal dikin, ziwa dikin. Heger hebe

---

801 Jêder: 2, 3, 4, 7, 10.
802 Jêder: 26, 27, 28, 32, 33.
803 Jêder: 6, 12, 14, 16, 35, 37.
804 Jêder: 5, 12, 13, 19, 25.
805 Jêder: 120.

melhema destan tê didin.[806]

Di serdemên dawî de serî li saziyên tenduristiyê û dermanxaneyan tê dayîn. Zarokan nîşanî bijîşkên zarokan didin. Ew jî cureyên pudra û melheman ji wan re pêşniyar dikin.[807]

## Ba (şewat)

Ba, bi navê xwe yê zanistî osteoartrît (OA), nexweşîneke dejeneratîf e û her ku temen mezin dibe zêdetir dibe û bi awayekî zêde tesîrê li çawaniya jiyana mirovan dike. Dibe sedema xirabûna kirkirikan û guherîna hestiyên lingan. Wekî nexweşîneke ku tesîrê li movikan û derdora movikan dike tê qebûlkirin. Di movikên curbecur de û bi taybetî jî di movikên çok û kemaxan (kulîmek) de çêdibe. Lêbelê gava tesîreke mezin li mazmazkê (hestiyê qorikê/piştê) bike, dibe ku bibe sedema hin pirsgirêkên girantir.[808]

Her ku temenê mirov mezin dibe nexweşînên kronîk jî li mirov peyda dibin. Yek ji van nexweşînan jî ba ye. Li herêma Semsûrê li hin gundan gel vê nexweşînê wekî "şewat" jî bi nav dike.[809] Wek mînak, kesê/a ku ba ketibe jinûyên wê/î dibêje, "Şewat ketiye jinûyên min, *dernakeve.*"

Ba/şewat, bi taybetî di lingên mirov de xwe dide der û çareyeke wê ya teqez jî nîne. Di tiba nûjen de bijîşk bi hin dermanan êşê kêm dikin. Lê nexweşî bi giştî ji holê ranabe. Ji demên kevin heta niha mirov li dermanê vê êşê û janê geriyane. Her kesekî/ê li gorî zanîna xwe dermanek ceribandiye. Ji wan dermanan hin jê sûdewer bûne. Di vê mijarê de pêkanînên dermanên Kurmancî yên sereke weha ne:

- Kesên ku şewat dikeve jinûyên wan serî li golên zîroyan didin. Li her herêmê golên zîroyan hene. Piranî di demsala havînê

806 Jêder: 7, 20, 33, 34, 115, 136.

807 Ahmet Günay, "Pişik Tedavisi", http://www.uzmantv.com/konu/yetiskinlerde-pisik-tedavisi (15.11.2018)

808 Tiraje Tuncer, Hasan Fatih Çay vd., "Diz Osteoartrit Tedavisinde Kanıta Dayalı Öneriler: Türkiye Romatizma Araştırma ve Savaş Derneği Uzlaşı Raporu", *Turk J Rheumatol*, 2012;27(1), r. 2.

809 Jêder: 1, 7, 12, 13, 17, 19, 114, 147.

de, mirovên ku ji ber bayê çongên xwe bi gazin in hevdu agahdar dikin û rojekê diyar dikin. Wê rojê bi hev re xwarin û vexwarinên xwe amade dikin û diçin ser gola zîroyan. Li gorî baweriyê zîro tenê bi mirovên nexweş vedidin. Roja ku jin dikevin golê mêr naçin wan deveran. Jin delingên xwe hildidin û dikevin avê. Di nav avê de rûdinin. Zîro tên û bi wan vedidin. Li gorî baweriya gel, zîro tenê xwîna pîs dimêjin. Dema ku xwîna pîs qedandin (têr mijiyan) dev ji mirov berdidin. Hin kes dema ku vedigerin malê çend zîroyan tevî hinek av dixin nav derdankekê û bi xwe re tînin. Wan zîroyan carinan didin kesên ku nikarin heta golê herin. Carinan jî ji bo xwe hiltînin.[810]

> "Sewê şewatê, sewê bê, deherin Golê Zirûya. Wextê cehzeran, jin top diwin deherin golê. Ê li hendê gundî Bûwûyê ye. Berê bi bergîra diçûn. Jêla delingê xa heldikişînin, dikevin golê. Zurî, tên bi merî nexaş ve didin. heta ki wê xûnê pîs giyê nekişînin meriya bernadin. Ki bayî di ku da we zirû deherin wê bi wê dere va didin. Ê pire jî bi jinûya va didin, faydê xa pir e. Hen vegerê çendika peva wê avê bi xa ra tînin malê didin ên ki nikan warin golê."[811]

Li herêma li gundê Xemşîgê yê li ser navçeya Kolikê (Gexte) Gola Zîroya bi nav û deng e. Her sal bi sedan kes, ji bo tenduristiya xwe diçin ser vê golê.

> "Zirûyên Golê Zirûya, xûnê pîs dimêjin. Heta ki ew xûna pîs di canî meriya da sax newe, meriya bernadin."[812]

Di van salên dawî de li Tirkiyeyê nojdariya bi rêbaza zîroyan ji nû ve ketiye rojeva wezareta tenduristiyê. Bijîşk heger pêwîst bibînin dikarin berê nexweşan bidin navendên tenduristiyê ku zîroyan bi kar tînin.[813]

Gelek kesên ji ber nexweşîna bayê tengezar, berî ku herin

---

810 Jêder: 4, 6, 7, 19, 25, 75.
811 Jêder: 59.
812 Jêder: 162.
813 Geleneksel ve Tamamlayıcı Tıp Uygulamaları Yönetmeliği, http: www. resmigazete.gov.tr, eskiler, 2014, 10, 20141027-3.htm (01.12.2018).

bikevin gola zîroyan serî li Ziyareta Bê (Êl Bawa) didin. Li gelek deverên Tirkiyeyê bi vî navî ziyaret hene û kesên ku şewat dikeve laşê wan serî li van ziyaretan didin. Li hin bajaran ji yekê zêdetir ziyaretên bi navê "Êl Bawa", "Êl Xan" û "Yel Baba" hene. Wek mînak, li Semsûrê ziyareta Êl Bawa li nêzîkî gundê Misûrka ye. Li Rihayê û Meletiyê jî ziyareta Êl Baba heye. Nexweşên ku diçin ber wan ziyaretan heger cih û derfet hebe şevekê di hundirê ziyaretê de radizên. Bi axa derdora wan ziyaretan devera ku ba ketiyê mist didin.[814] Di civaka Elewî de gel, axa êrikî Ap Ezîzê dike herî û di devera ku ba ketiyêye mist dide. Piştre bi ava germ dişo.

> "Ez pênc salî bûm, ez ferc bûm. Ez birim Êl Xanê. Ê li Urfê ye. Di ser wê ziyaretê de ez rawûm ser xa."[815]

- Berê di nav gel de hekîmên Kurmancî yên ku bayê jinûya derdixistin jî hebûn. Van hekîman bi mistdanê bayê laş tahm didan û di serê tiliyan re derdixistin derve. Jêder Kemal Özbey ku yek ji neviyên hekîmeke dermanên Kurmancî ye, di vê mijarê de weha dibêje:

> "Li gundê Sûsanê (Ortança) î bi ser Kolikê va, pîrika min hewû. Ew bi xa hekîm bû. Wextê ku min ew dî bi qasî 80 salî emrê wê hewû, lê ra digotin "Pîrê". Kesên ku şewat/ba diket jinûyê wan dihatin ba Pîrê. Pîrê, bi diya (dia) û mistdanê ba tanî û ji serê pêçiyan ra derdixist derva. Pîrê, aloq jî diteqandin, kurikên ku pereyên hesinî dadiqurtandin jî şîr bi ser wan ve dikir. Bi vî şeklî ew vedirşiyan û pere derdiket derva.[816]

- Li herêmê tê bawerkirin ku gava cihê ba ketiyê bê germkirin wê baş bibe. Loma ev kes diçin avgermên li herêmê û bajarên derdorê.[817]

- Hin kes, bi taybetî zivistanê çermê sewalan li cihê ku ba ketiyê dipêçin. Bi taybetî çermê mî û bizinan. Çerm, li devera ku

---

814 Jêder: 6, 11, 19, 24, 38, 73, 90, 112, 125, 156.
815 Jêder: 21.
816 Jêder: 48.
817 Jêder: 49, 74, 75, 76, 93.

ba ketiyê tê lefandin û paşê bi potekî yan jî benikekî tê girêdan. Tê bawerkirin ku wê bi vî awayî devera ku ba ketiyê germ bibe û êşa wê sivik bibe.[818]

Kurdên li Azerbeycanê jî ji bo başkirina nexweşîna bayê sûdê ji heywanên dirinde digirin. Ji bo vê, goştê kurîbeşk û jûjiyan dixwin. Heger bê peydakirin bi bezê mar an jî hirçan li devera ba ketiyê difirkînin.[819]

## Sewtketin/Dengketin

Sewtketin/dengketin, xîzxîzkîbûn, lerizîn û dewixîna deng e. Di dengketinê de guherînên mezin di damarên deng de çêdibin. Di nav gel de tê gotin ku giriyê zêde, qêrîn, axaftina bi dengekî bilind, sermagirtin, vexwarina ava qerisî û hwd. dibin sedemên sewtketinê/dengketinê. Lêbelê gelek sedemên dengketinê hene: Kêmgirtina gewriyê, girêkên (nodul) di têlên deng de, girêkên (kîst) cirxweş ên wekî polîpê; nexweşînên pişikê, kutbûna rehikên têlên dengan, herikîna kelmûçê (belxem) ya ji ber alerjî yan jî kêmgirtinê, reflu û verişîn, tumorên gewriyê û derdora gewriyê; tehdeyên li derdora têlên dengan û hwd.[820]

Gelek caran ji ber sermayê ango mîqrobekê, dengê mirovan kêm dibe û carinan jî dikeve, yekcar dernayê. Di demên weha de mirov ji bo ku dengê xwe rast bikin serî çareseriyên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî didin:

> "Şorba çêdikin. Pelokê mot çêdikin, rûnî malê tevlê dikin û didinê."[821]
>
> "Hewik rûnî zêytê bi ser va dikin, sewê ku gewriyê nerm bike."[822]

---

818 Jêder: 3, 9, 12, 13, 18.

819 Nofal Shirinov, *"Folklora Kurdên Azerbaycanê"*, (Teza Masterê ya Çapnekirî), Zanîngeha Mardîn Artuklu Enstîtuya Zimanên Zindî Makezanizta Ziman û Çanda Kurdî, Mêrdîn 2017, r. 63.

820 "Ses Kısıklığı", https://www.memorial.com.tr/saglik-rehberleri/ses-kisikligi-ciddi-hastaliklarin-habercisi-olabilir-mi/ (24.10.2018).

821 Jêder: 71.

822 Jêder: 126.

"Rûnî malê û mot vedixwin."[823]

- Xwarinên germ û nerm yên wekî şorbeyan ji bo kesê/a ku dengê wî/ê ketiye têne amadekirin. Ji dims, arvan û rûnê nivîşkê pilorê çêdikin û dixwin. Çaya çiyê, pûngê û hwd. dikelînin û ava wan vedixwin. Hinek hingûv dixin nava ava germ û vedixwin.[824]

- Heta ku dengê wan wekî berê rast bibe bi kefiyekê, kitanekê, destmalekê û hwd. girêdidin ji bo ku sitûyê wan germ bimîne. Heta ku ji wan tê kêm diaxivin.[825]

Gava ku ji pêkanînên dermanên Kurmancî/Kurdewarî sûd neyê wergirtin serî li saziyên tenduristiyê didin.

## Taya Salê/Tawî (Sitme)

Sedema taya salê, cureyekî kelmêşan (anofel) e. Wîrûsa ku ev kelmêş bi xwe re digerîne bi rêya devlêkirinê digihêje mirovan. Bi taybetî li herêmên ku şilav, avgenî û golgenî pir in nexweşîn zêde ye. Di wan golgeniyan de kelmêş zêde dibin û tên li ser laşê mirov xwe datînin û bi mirovan vedidin. Kesên ku kelmêşan pê vedane piştî demekê (di navbera hefteyekî heta bîst rojan) bi taya salê dikevin. Berê taqeta mirovên nexweş kêm dibe. Piştre, diricifin û germa canê wan zêde dibe.[826]

Taya salê, nexweşîneke vegir e. Dema ku kelmêşek xwîna kesekî/e nexweş bimije û pê ve here bi kesekî/e sax/xweş vede nexweşînê digihîne wî/ê kesî/ê jî. Nexweşîneke giran e. Bi taybetî di dema zaroktiyê de gelekî bi xetere ye. Heger neyê dermankirin mirovan bi taybetî jî zarokan dikuje. Tê zanîn ku heta demeke nêzîk tenê ji ber pêvedana cureyekî kelmêşan bobelat hatiye serê mirovatiyê. Kelmêşa bi celeba anofel bûye sedema nexweşîna tayê. Ta jî bûye sedema mirina bi hezar mirovan.[827] Li

823 Jêder: 66.

824 Jêder: 1, 5, 15, 18, 108, 117.

825 Jêder. 12, 15, 17, 18, 44.

826 Asuman Şengöz İnan, İlknur Erdem vd., "Sıtma: 40 Olgunun Değerlendirilmesi", *Türkiye Parazitoloji Dergisi*, 2010; 34 (3): 147-151.

827 Fehminaz Temel, "Yeni Görülen ve Yeniden Görülen Enfeksiyonlar", *Halk Sağlığı Temel Bilgiler (952-961)*, Hacettepe Üniversitesi Yayınları, Ankara 2006.

gor lêkolînekê, di navbera sala 1917-1925an de li Mêrdînê rêjeya tayê (sitma) ji sedî 80; li Meletiyê ji sedî 20 bûye.[828] Digel ku li herêma me kêm bûye jî li deverên din ên dinyayê ev nexweşîn bi bandor didome. Li gorî saziya tenduristî ya cîhanê, digel hemû hewldanan, tenê di sala 2019an de li ser rûyê dinyayê 229 milyon kes bi nexweşîna tayê ketine û ji van kesan 409 hezaran jiyanan xwe ji dest daye.[829] Taya salê/Tawî, digel hemû parza û tevdîrên din ên tenduristiyê dibe sedema mirinan. Wek mînak, li gorî gotareke ku di sala 2000an de hatiye weşandin taya salê, di serî de zarokên parzemîna Afrîqa, bûye sedema mirina 1,5-2 milyon mirovan.[830] Ev hejmar jî asta xetereya nexweşînê diyar dike.

Bi xêra parzaya tayê û tevdîrên ku hatine girtin nexweşîna taya salê/tawî li welêt êdî nemaye yan jî li ber xelasbûnê ye. Çareseriya vê nexweşînê parzaya taya salê, ziwakirina golgeniyan û şilavan e.

Berê gelek Kurdan ji ber vê nexweşiyê jiyana xwe ji dest dane. Nivîskarê kovara Hawarê, ku di salên 1932an de dest bi weşanê kiriye, Dr. Ehmed Nafîz bala xwendekaran dikişîne ser xetereyên vê nexweşiyê û di vê mijarê de weha dibêje:

> "Hon dibînin qo ta nexweşiqe giran û xedar e. Ji tîfo, qolêra û ji webayê jî xerabtir e. Nexweşîqe welê ye qo rayê heyîna me, rayê heyîna miletî diqoje."[831]

Ji aliyê din ve, şopên wê û serpêhatiyên derbarê vê nexweşiyê de hîn jî di bîra civakê de zindî ne.

Li gorî zanîn, tecrûbe û baweriya gel, dermanê taya salê xwêdan e. Piştî ku nexweş xwêdanê dide hinekî rehet dibe. Lêbelê piştî du-sê rojan careke din bi tayê dikeve. Heger sedema

828 Fatih Tuğluoğlu, "Türkiye'de Sıtma Mücadelesi (1924-1950)", *Türkiye Parazitoloji Dergisi*, 2008; 32 (4): 351-359.

829 "DSÖ: Koronavirüs Sıtma ile Mücadelemizi Engelliyor", https://www.dw.com/tr/dsö-koronavirüs- sıtma-ile-mücadelemizi-engelliyor/a-55770011. (09.01.2021).

830 Cenap Yıldırım, Ufuk Yıldırım, "Dünyayı ve Türkiye'yi Tehdit Eden Bir Hastalık: Sıtma", *STED Sürekli Tıp Dergisi*, 2000; 9 (8): 17-9.

831 Ehmed Nafîz, *Hawar*, 1932; (2): r. 3.

nexweşînê ji binî ve ji holê neyê rakirin rewşa nexweş xerabtir dibe û dibe taya veşartî. Rengê laşê nexweşan ber bi zeriyê ve diçe, xwîna wan kêm dibe, zikê wan diperçive. Nexweş zû bi zû namire lê çi halê wî jî namîne. Gelekî êşê dikşîne heta ku dimire.[832]

Berê li herêma Semsûrê li ber ava çeman zeviyên çeltûkê (birinc-riz) hebûn. Li wir hilberîna birincê/rizê dihate kirin. Wekî ku tê zanîn ji bo ku birinc rabe demeke dirêj di nav avê de dimîne. Ew jî tê wê wateyê ku ewqas dem av di cihê xwe de dimehe, genî dibe. Ew jî dibe hêlîna kelmêşan. Kelmêş li ser hev zêde dibin. Ji ber wan kelmêşan gelek kes bi nexweşîna taya salê ketine û gelek ji wan jî mirine.

> "Berê ta salê hewû. Ku diket nav milet, bi gir û hûr dida ber xa. Xelî meri pê dimirin. Kurik bi carkê va dicirifiyan, canî wan germ diwû, mîna êr diwû. Digotin, 'Çend cilan û orxanan bavên ser. Bira xwi bide.' Hen pê rehet diwûn. Lê ê pirê heta salikê jî di nav ciya da diman. Zer diwûn. Digotin, 'Mot bi ser vakin.' Songi jî dimiriyan."[833]

- Kesên ku di demeke kin de ji taya salê xelas nabin diçin ber avên pîroz, kaniyên tayê. Dema ku diçin ber wan kaniyan hinek pîvaz, xwê û nan jî bi xwe re dibin. Piştî ku ji wê avê hinekê bi nexweş didin vexwartin û serê wî/ê bi wê avê dişon, li ber Xwedê digerin, dia dikin da ku nexweşê/a wan baş bibe. Herî dawî ew nan, pîvaz û xwêya ku bi xwe re anîne, wekî diyariyekê datînin ser keviya kaniyê û vedigerin malê. Li gundê Hesenka, Narince, Malê Bêxçe û gelek deverên din, ji van kaniyan hene.[834]

- Hin kes jî ji bo ku ji taya salê xelas bibin, diçin ber ziyaret û tirban. Di wan ziyaretan de şevekê radizên û dia dikin. Ji ava kaniyên derdora wan ziyaretan vedixwin û bi axa wan ziyaretan serê xwe dişon. Ji wê axê hinekê dixin nav avê, dihelînin û vedixwin. Heta ku li wir bin bi hev re xwarinê çêdikin û dixwin, li kesên derdorê wekî loqmeyekî belav dikin. Wisa tê bawerkirin

832 Jêder: 10, 24, 136.
833 Jêder: 24.
834 Jêder: 7, 15, 22, 25, 96, 100.

ku ew êrik-ziyaret dê nexweşê wan baş bike. Kesên li herêma bakurê Semsûrê û Cêlikanê ji bo çareserkirina taya salê serî li ziyareta Zerbanê didin.[835]

Zêrevanê (nobedar) ziyareta Zerbanê, balê dikişîne ser girîngiya baweriya bi Xwedê û ziyaretê û di vê mijarê de weha dibêje.

> "Ez bekçiyê ziyareta Zerbanê me, sewê tayê jî tên vir, sewê miraza jî. Sewê giyê jî tên. Kî vê avê vexwe, bi ê Xwedê ew ê rehet biwe. Wekî di jî gi înakirin e, giyê bi Xwedê ye."[836]

Li herêmên din ên Tirkiyeyê ji bo taya salê pêkanînên din jî hene. Yek ji wana tirsandin e. Bi taybetî bi şev, di tariyê de bi kêr, das an bivirekî bi ser kesê/a nexweş de diçin. Wisa tê bawerkirin ku nexweş dê bitirse, ziravê wî/ê dê biqete. Bi vî rengî ew ê ji tayê pak bibe.[837]

## Pizik (pizrik)

Pizik, cureyekî nexweşîna çerm e. Di herkesî û di her temenî de dibe ku bê dîtin. Bi taybetî li laşê keç û xortên naşin zêdetir xuya dibin. Nexweşîneke zêde girîng nîne. Lêbelê dema ku hejmara wan zêde dibe û şopa wan dimîne ji aliyê dîtbariyê ve rewşeke ne xweş çêdibe. Ew jî derûniya hin kesan xera dike. Bi taybetî ji bo keç û xortên ciwan dibe pirsgirêkeke girîng. Ji aliyê zanistî ve sedema pizikan xetimîna qulikên laşê mirov e ku hewayê jê distîne.[838] Lêbelê sedema wan ji sedî sed nayê zanîn.

Li gorî çavdêriyan, mirov dikare bibêje ku di rewşên bi xem û stresê de, di dema ciwantiya pêşî ya keç û xortan de û di ser-

835 Ahmet Altun, *Li Semsûrê Cihên Pîroz Du Mînak: Ziyaretên Zerban û Qazxan*, (Projeya Lîsansa Bilind ya Bê Tez) Zanîngeha Mardîn Artuklu Estitûya Zimanên Zindî Makezanista Ziman û Çanda Kurdî, Mêrdîn 2017.

836 Jêder: 126.

837 Alparslan Gönenç, *Antalya İli Korkuteli İlçesinde Halk İnanışları ve Halk Hekimliği*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Selcuk Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Ana Bilim Dalı Türk Halk Edebiyatı Bilim Dalı, Konya 2011, r. 54.

838 Serap Öztürkcan, Ömer Aydemir, Işıl İnanır, "Akne Vulgarisli Hastalarda Yaşam Kalitesi", *T Klin J Dermatol*, 2002; 12: r. 131-134.

dema hin rewşên taybet ên jinan de pizik zêde dibin. Her weha hejmara pizikan li gorî taybetiyên çermê mirovan jî diguhere. Kesên ku çermê wan bi dohn/rûn e ji kesên ku çermê wan zuha ye bêtir bi pizikan re rû bi rû dimînin.

Berê, li herêmê ji bo ku hejmar û bandora pizikan kêm bikin hin dermanên Kurmancî dihatin bikaranîn: Wekî gilê -ku cureyeyekî axê ye- hîro, pirpar, ava leymûnan û hwd.

> "Şûna ku pizik lê hatine bi gilê dişûştin."[839]
> "Di wextê serşûştinê da hena hîlor dixistin nav avê. Digotin, hîlor avê nerm dike û rûnê li ser laşî meriya dişo. Hena pirpar dikeland, bi wê avê ser çavên xa pê dişûştin. Lê ew kok nê rind e. Ê niha bi ava leymûna serçavên xa dişon. Sewê ku dê pizik ziha biwin."[840]

Berî ku têkberên paqijiyê yên wekî sabûn, şampuan û hwd. bikevin nava jiyana gel, ji bo paqijiyê ji axê, xweliyê (arî) û hin riwekan sûd dihate wergirtin. Gel, serê xwe bi gilê dişûşt. Ji bo ku av nerm bibe û laş û lîbas baş werin şûştin kulîlkên hîro dixistin nava ava germ. Wisa dihate zanîn û bawerkirin ku gemar bi alîkariya van têkberan paqij dibe. Îro jî dema ku li çolê destên mirov gemarî dibin heger sabûn tunebe bi axê dest têne firkandin û bi avê têne zelalkirin. Ax rûn û gemara li ser laş paqij dike.[841]

Li hin deverên Anadolê jî pêkanînên bi vî rengî hene. Wek mînak li Duzîçiyê ji bo başkirina pizikan di sîtilekê de giya genek heta ku dibe lepe tê kelandin. Paşê vê lepeyê li ser pizikê yan jî kulê didin. Bi vî awayî kêma di hundirê pizik an jî kulê de hişk dibe.[842] Li gundên Samsunê, navika ku ji zarokan dikeve bi dergûşa wî/ê ve girêdidin. Dema ku serê zarok dişon dixin nav ava serî. Wisa tê bawerkirin ku ew navika nahêle ku pizik

---

839 Jêder: 20.

840 Jêder: 27.

841 Jêder: 2, 8,19, 20, 32, 46, 69.

842 Uygar Kurum, *"Düziçi'nde Halk Hekimliği"*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Niğde Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Edebiyatı Bilim Dalı, Niğde 2008, r. 24.

li canê zarok bên.[843] Di rewşa îro de, kesên ku ji pizikan bêzar û bi gazin in piranî serî li bijîşkiya nûjen didin, bijîşk li gorî rewşa nexweşiyê hin dermanan pêşniyar dikin.

## Serma

Serma, di her demsal û serdema jiyanê de derdikeve pêşiya mirovan. Bi taybetî, di dema zaroktiyê de nesaxiya ku herî zêde xuya dike serma ye. Bi taybetî zarokên demsalên sar de tên rûyê erdê bêtir sermayê digrin. Hin ji wan zarokan ji ber nexweşînên ku bi sermayê re têkildar in (bironşît, ta, nepixîna aloqan, bêhntengî, herikîna poz, pişik û hwd) jiyana xwe ji dest didin. Ji bo pêşîlêgirtina sermayê û nexweşînên girêdayî sermayê, gel serî li gelek pêkanînan bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî dide:

- Pêkanîna herî berfireh, axa bin zarokan e. Cureyekî axa gewr e. Dema şil dibe nabe herî. Gundî diçin kanên wê axê dibînin û li wir gemara li ser axê paqij dikin. Ji kanê axê dikolin. Bi qasî pêdiviya xwe tînin. Wê axê wisa hûr dikutin ku wekî hebên bilxur dibe. Piştre wê axê li bêjingê dixin. Heger hebe ji kevir û gemarê paqij dikin. Zivistanê tenekeyekî didin ser sobeyê û wê axê germ dikin û ziwa dikin. Piştre datînin û li ser tejekê radixin, sar dikin. Di rojên zivistanê yên sar de ji wê axa germ hinekê li ser paçikekî radixin û pitikê li ser radizînin. Bi vî rengî heta ku zarok şiyar bûye ew ax di bin wî/ê zarokî/ê de hêdî hêdî sar dibe. Zarok jî germ dibin û bi rehetî radizên. Dayik car caran paçikê bin zarokan vedikin û sexitiya wan dikin. Heger xwe şil kiribin an gemarî kiribin wê axa şil radikin û diavêjin derve. Axa mayî dîsa germ dikin û didin bin zarokan. Wisa tê bawerkirin ku ew ax zarokan germ dike û ji sermayê diparêze.[844] Ji aliyê din ve wisa tê bawerkirin ku ew şopên ku

843 Bekir Şişman, Guncha Ovezova, "Türk Kültürünün Sürekliliği Bağlamında Türkiye ve Türkmenistan'da Doğumla İlgili Yaşayan Halk İnançlarının Karşılaştırılması", Gençlik ve Kültürel Mirasımız Uluslararası Kongre, 16-18 Mayıs 2014 Samsun, r. 194.

844 Jêder: 2, 5, 6, 17, 22, 31, 70, 86, 140, 161.

ax di canê zarokan de dihêle piştre tijî goşt û xwîn dibin. Bi vî awayî zarok xurt dibin.[845] Li gorî jêderan, di demên berê de ew ax li bajaran jî hatiye firotin.

> "Li bajêr jî axa bin kurikan hewû. Difirotin. Me zivistanê germ dikir. Sewê ku sermê negrin."[846]
> "Li Narincê, li hendê Pûrî Awişê ew axa heye. Me bi xa li wir tanî."[847]

- Yek ji pêkanînên balkêş li dijî sermayê bikaranîna lawiran e. Goşt, xwîn, çerm û hwd. lebatên lawiran ji bo dermankirina gelek nexweşiyan hatine bikaranîn. Hin ji lawiran kovî ne û kêm têne dîtin. Hin ji wan jî avî ne. Di nav avê de dijîn. Tiştên ku di nav jiyana rojane de pir nayêne bikaranîn, gelek caran nayên bîra mirovan; dilê gelek kesan jê dixele, yên wekî kevjal, gûbeq (kevz), mar, kosî û hwd. di çareserkirina nexweşînan de wekî derman hatine bikaranîn. Wek mînak: Ava giyanê kevjalan.[848]

Bi raya me, bikaranîna tiştên weha sosret hin avantajan dixe destê kesên ku hekîmtiyê dikin. Bi van bikaranînan statuya wan hinekî bilind dibe. Hin ji wan têkberên sosret ji bo sermayê jî hatine bikaranîn. Kevz û kevjal ji bo nojdariya sermayê hatiye bikaranîn:

> "Gûbeq (kevz) dikişandin ser zikî kurikan; kevcal kun dikirin, ava wê didan kurikan. Du dilop derdiket, me dixist devî kurikan."[849]

Heger yê ku serma girtî dayik be pêkanîn cihê ne. Lewra nesaxiya dayikê bandorê li ser zarok jî dike. Di rewşên weha de piranî xwarin û vexwarinên germ didin dayikan. Şîr germ dikin û didin dayikan. Hêk û mot (dims) dikelînin, şorbeşîrê çêdikin, şorbeya birincê çêdikin û didin dayikê. Car caran jî dayika ku serma girtiye di nav şîrê germ de didin rûniştandin.[850]

---

845 Jêder: 9, 11, 18, 20, 27.
846 Jêder: 84.
847 Jêder: 150.
848 Jêder: 4, 5, 18, 20, 23, 24, 71, 80, 99.
849 Jêder: 23.
850 Jêder: 1, 19, 20, 24, 37, 40, 55, 59, 68, 122, 123.

> "Ki jinan serma digirt, şîr dianîn, germ dikirin, dikirin fereke fere û kevin. Di nav de rûdiniştin."[851]

Li Aydinê, ji bo sermayê axlemûr, giyagewrik, nane, lîmon, zencefîl û tarçîn tên kelandin. Mirov bi vî awayî xwe ji nexweşîna sermayê diparêzin. Heger kesek nexweş be bi vî awayî tê nojdarîkirin. Her weha nebata bi navê *"güdelik"* dixin nav ava kelandî û dem dikin. Heger axlemûr û hîbîskus bi hev re bên demkirin û vexwarin wê bi kêr bê.[852]

Li her devera dinyayê, di nav dermanên sermayê de dermanên riwekî li pêşiyê ne. Lewra, li dijî sermayê bikaranîna riwekan çandeke gelekî kevnare ye û hîn jî li gelek welatan didome. Wek mînak, li Îranê jî gelek cureyên riwekan ji bo sermayê têne bikaranîn. Li gorî lêkolîneke ku di 2018an de hatiye weşandin, li Îranê di nav hemû riwekên ku di warê bijîşkiya gelêrî de têne bikaranîn rêjeya (para) riwekên ji bo sermayê ji sedî 71 e.[853]

Di salên dawî de, wekî hişmendiyekê, careke din berê xwe daye bijîşkiya gelêrî. Bêtir wekî tevdîreke li dijî sermayê, gel riwekên wekî beybûn, kulîlk û qalikên hinaran, kulîlkên hîroyan, pûng, nane, çaya çiyê, hingûv û hwd. di demsala xwe de berhev dike, hişk dike û hiltîne. Di demên pêwîst de wan bi kar tîne.[854] Lêbelê di sermagirtina zarokên piçûk de bêtir berê xwe dide bijîşkiya nûjen û saziyên tenduristiyê.

## Mîrkutok (Xwirî)

Yek ji nexweşînên dema zarokatiyê jî mîrkutok ango xwirî ye. Mîrkutok, endameke koma herpeswîrûsa ye û ji ber wîrûsa

851 Jêder: 36.

852 Züleyha Ülger, *Aydın (Merkez) ve Çevresinde Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Adnan Menderes Üniversitesi, SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı, Aydın 2012, r. 141.

853 Fatima Sefidkon, "Nigah-ı Be Veziyet-i Daruha-yı Giyahi Der İran", Tebiet-i İran, 1396; 2 (6), r. 9.

854 Jêder: 8, 10, 15, 18, 71, 76, 80, 83, 118.

varîcella-zosterê çêdibe.[855] Nexweşîneke vegir e. Xwirî û mîrkutok yek in, li gorî herêman binavkirina nexweşiyê diguhere. Mîrkutok (xwirî), mîna germişkên piçûk in lê her du ne yek in. Mîrkutok, hinekî bi av in, arê laşê mirovan zêde dikin lê germişk piçûk in, ji ber hewaya germ çêdibin û arê laş zêde nakin.[856] Serê mîrkutokan wekî pizikan av digrin. Bêtir di laşê zarokên piçûk de dertên. Di demeke kin de li hemû laşê mirov belav dibin. Canê mirov tev dixure. Kêm zêde her zarok carekê bi vê nexweşiyê re rû bi rû dimîne. Di nav gel de derbarê berbelavbûna sorik û mîrkutokan de baweriyek weha heye: Dibêjin, "*Heger sorik û mîrkutok li vê dinê li meriya nedin der, li wê dinê di hestiyê canê meriv de didin der; di Quranê de jî heye.*"[857] Ew nêrîn jî diyar dike ku derbaskirina mîrkutokan ya di serdema zaroktiyê de wekî rewşeke xwezayî tê pejirandin. Ji bo nojdariya mîrkutokan (xwirî) mast didin zarokan; şêraniyê didin zarokan. Heta ku mîrkutok hişk nebin, serê zarokan naşon.[858]

Mîrkutok (xwirî), bi taybetî di salên pêşî yên dibistanan de, di nav zarokan de belav dibe. Lewra mîrkutok vegir e. Bi rêya hewayê, hingavtina (temas) destan, bi xwarin û vexwarinê ji kesekî/e digihêje kesek/e din. Hemû laşê zarokan xal bi xal sor dibe. Piştre serê wan xalên sor av dide û dixwire. Dema ku zarok bi mîrkutokan dikevin germa laşê wan zêde dibe. Laşê wan diêşe. Li hin gundên Semsûrê, di dema mîrkutokan de, zarokê nexweş li ber germê dihêlin. Wisa tê bawerkirin ku çiqas germ be dê mîrkutok ewqas zû derên û vemirin. Ango pêvajo dê kin biajo.[859] Dema ku parzaya mîrkutokê li zarok xistibin û nexweş ji gemar û kirêtiyê dûr bê hiştin di çend rojan de mîrkutok bi xwe vedimirin. Lê heger, tevdîr neyên sitendin mîrkutok dikare zarokan bikuje.

---

855 İlknur Aydın Avcı, *Enfeksiyon Hastalıkları*, Göktuğ Yayınevi, Amasya 2007, r. 55.

856 Jêder: 1, 6, 37, 46, 50, 61, 79.

857 Jêder: 1, 3, 4, 62, 80.

858 Jêder: 1, 6, 12, 14, 20, 32, 37, 38, 46.

859 Jêder: 2, 9, 25, 96, 101, 117, 142.

"Xwirî jî mîrkutok in. Li Hesenka ê me jî di nav da xelî kurik bi mîrkutokan mirin."[860]

Li herêma Enqereyê, heta 40-50 rojî serê zarokan naşon. Zarokê ku mîrkutok jê xuya bûne bi zarokên din re nayê ba hev. Heta ku ji malbatan bê, xwarinê nêzîkî nexweş nakin, tenê şêraniyê bi wî/ê didin xwarin.[861] Li Aydınê ji bo ku mîrkutok tahdê li zarokan nekin, dims bi zarokan didin vexwartin. Ji bilî vê yekê qutikê (îşlig-gomleg) zarokê ku bi mîrkutokan ketiye dibin bi dara şikokeyê ve dadiliqînin. Wisa bawer dikin ku heta ew qutik ziwa bibe dê mîrkutok jî wenda bibin.[862]

Li Semsûrê, gel wisa bawer dike ku mîrkutok di heft rojan de dertên, di heft rojan de zêde dibin û di heft rojan de jî vedimirin. Her weha dibêjin ku divê mîrkutok neyên teqandin lewra, dê şopa wan heta hetayê bimîne.[863]

## Hefttûzik

Hefttûzik, nexweşîneke çerm e û bi rêya parazîtên leîshmanîayê çêdibe.[864] Li gorî lêkolînan ev parazît bi rêya devlêkirina hin cureyên mêş û mêşikên wekî vizik, mêşika sîlikê û hwd. derbasî laşê mirovan dibe. Di dema devlêkirinê de, ev mêşik, hêka nexweşînê jî bera nav laşê mirov didin. Heta şeş-heşt heyvan di wir de zêde dibin û piştre wekî pizrik an jî deqeke sor li ser çerm dixuyê. Berê wê heta du santîman jî fireh dibe û demeke dirêj baş nabe.[865] Helbet, gel demeke dirêj sedemên vê nexweşînê nas nekiriye.

Nexweşînê, navê xwe ji gihayê heftûzikê girtiye û ku ev giya

860 Jêder: 28.

861 Aydın Temizsoylu, *Ankara'da Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Hacettepe Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Bölümü Türk Halkbilimi Anabilim Dalı, Ankara 2012, r. 102.

862 Ülger, *Aydın (Merkez) ve Çevresinde Halk Hekimliği*, r. 156.

863 Jêder: 1, 4, 8, 9, 140, 145, 162.

864 Arzu İlçe, Hacer Alpteker, Esra Koçoğlu, *Bulaşıcı Hastalıklar*, Göktuğ Yayınevi, Amasya 2013, r. 93.

865 "Şark Çıbanı Nedir?", www.florence.com.tr/sark-cibani (12.11.2018).

nojdariya vê nexweşiyê de tê bikaranîn.[866] Nojdariya wê di navbera 6 meh û salekê de diguhere. Heger neyê dermankirin wê bi salan bidome. Loma li hin deveran ji bo vê nexweşînê nasnavên wekî *"Kula salê"* û *"Kula heftsalê"* jî têne bikaranîn.[867]

Hefttûzik, di serî de enîşk, bin çengan, ling û ser çavan, hema bêje li her derê laşê mirovan çêdibe. Ev yek li gor cihê devlêkirina mêşan diguhere. Devera kulbûyî sor dibe û diwerime. Piştî wextekê devera sorbûyî dibe wekî kunêrê. Ew kunêr wekî nokekê mezin dibe û kêm digre. Her weha cureyeke wê jî heye ku kêm nagire. Di nav çend mehan de mezin dibe û dibe bi qasî gûzekê. Qalikê serê wê hişk dibe û di bin qalik de kêm kom dibe. Di nav wê kêmê de gelek kurmikên (parazît) nexweşiyê hene. Mêş van kurmikan bi rêya devlêkirinê digihînin kesên bi tendurist.[868]

Hefttûzik, ne kujende ye lêbelê heger neyê dermankirin wê şopa wê heta mirinê bimîne. Ji ber vê yekê jî nexweşîneke girîng e.[869]

Wekî ku li jor jî hatibû qalkirin, hefttûzik navê nexweşiyekê ye lê di heman demê de navê giyayekê ye jî.

Berê, li herêma Semsûrê ji bo dermankirina hefttûzikê, gel serî hekîmên Kurmancî dida. Hekîman, li rewşa kulê dinihêrt û li gorî wê dest bi amadekirina dermanên Kurmancî û nojdariya kulê dikir. Heger kul zer bûbe û kulê av girtibe singê dolaban germ dikirin û ew kul der dikirin. Heger hîn nerm nebûba giyayê hefttûzikê[870] dikelendin û hinek arvan tevlê dikirin da ku wekî melhemekê bibe. Ew giya li ber çeman, cihokan, li deverên şil, di nav baxçeyên spîndaran de çêdibe. Pelên wê wekî pelên şekir in lêbelê hinekî piçûktir in. Hefttûzikê dikutin, dikelînin didin ser kula hefttûzikê. Ev nojdarî heta ku kul bivemire tê dubarekirin. Piştre rojê du caran ew derman li ser paçikekî

866 Jêder: 3, 9, 143, 146, 148, 149, 155.

867 Jêder: 1, 10, 20.

868 Jêder: 1, 2, 17, 20, 25, 30, 58, 79, 112.

869 Jêder: 5, 6, 18, 20, 23, 157.

870 **Hefttûzik:** Li hin herêmên Kurdistanê ew giya wekî pelhewês jî tê binavkirin.

pahn dikin û didin ser kulê.[871]

Jêder B.Y, behsa serpêhatiya kurê xwe dike. Ji şêraniyê, peloka dimsê, ji bilxurê kutilkan heta batovê (botav) gelek dermanên bijîşkiya gelêrî bi kar aniye lê ji hefttûzika li binçengê kurê xwe re çareserî nedîtiye:

> "Hesenê me kul li binçengên wî dihat. Me bir tixtor. Der kir lê dîsa lê hat. Li Adiyamanê jinik heye: Zelxa Hesî Ûsî Qasê diwêne lê ra. Wê jinikê çavê xa rind nawûnin. Go, hewkê bidin ber royê (sewê ku biwûne). Çing lê mezi kir go, 'Va kula li bin çengan tê, li gewriyê tê, (haşa) li qûnê tê.' Go, 'Pelokê mot bidin ser.' Me da ser, newû. Jinik li Urfê hewû. Em çûn ba wê. Go 'Bilxurî kufta û batovê bidin ser.' Me çend caran da ser, hewkê fayde kir. Ocax bû."[872]

Li gundê Qirxliyê hekîma Kurmancî Qudret Kapıcı (Qûdê), di ciwaniya xwe de ew kul dîtiye û derman kiriye. Wekî derman giyayê guriz û arvan bi kar aniye:

> "Dibû, zer dibû, seri dida. Ku zer bibûya, me singê dolawa di nav êr da rind germ dikir, heta ku sor bûye. Paşê mi ew singa di kulê ra derbas dikir, diteqand. Ku kulê hişk bûya mi guriz dikeland, hewk ard jî tevlê dikir, mîna melemê dibû. Me ew dermana dida ser."[873]

Hin hekîmên dermanên Kurmancî, giyayê gurnîgê reş dikelandin, hinekî arê (ar-arvan) genim jî tevlê dikirin. Dikelandin heta ku wekî hewdelê (pilor) bûye. Piştî hinekî sar dibû li ser potikekî pahn dikirin û paşê didan ser kulê. Li gorî baweriyê, ev pêkanîn, wekî tevdîrekê pêşî li ber zêdebûna vê nexweşînê digre.[874]

Berê li herêma me hefttûzik pir bûye, lê bi xêra tevdîrên ku hatine girtin û dermanên tibî nexweşîn ji holê rabûbû. Lêbelê di çend salên dawiyê de dîsa peyda bûye. Piştî şerê navxweyî yê

871 Jêder: 10, 28, 23.
872 Jêder: 8.
873 Jêder: 23.
874 Jêder: 23, 133, 148.

Sûriyeyê, bi koçberbûyîna gelê Sûriye re li Edene, Hetay, Riha, Semsûr û Mêrdînê di nav koçberan de hefttûzik berbelav bûye. Bi gumaneke mezin, ew kesên ku wekî koçber hatine welêt ev nexweşîn jî bi xwe re anîne. Rapora Penaberên Sûriyeyî û Xizmetên Tenduristiyê ya Yekitiya Bijîşkên Tirk (2014) jî vê daneyê piştrast dike. Li gorî vê raporê, ji sedî 95ê bûyerên hefttûzikê di koçberên ku ji Sûriyeyê hatine de hatiye dîtin.[875]

Bi pêşketina derfetên tiba nûjen re mirov -wekî gelek nexweşiyên din- kesên ku bi vê nexweşiyê bi guman in, serî li nexweşxaneyan û bijîşkên nûjen didin. Li gor vê yekê pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî jî kêm bûne.

## Qelewbûn/Talibûn

Zêdebûna bez û goştê canê mirov wekî qelewbûn/talibûnê (obezîte) tê binavkirin. Talibûn, li gor gumleta bêrûn, zêdebûna gumleta birûn û giraniya ku zêdeyî laşê mirov e.[876] Qelewbûn/talibûn berê ji aliyê gel ve wekî nexweşiyekê nedihate pejirandin. Lêbelê di demên dawî de wekî nexweşîneke tê pejirandin. Li gor rapora *"Lêkolîna Xweyîkirin û Tenduristiyê ya Tirkiyeyê-2010"* a Wezareta Tenduristiyê, li Tirkiyeyê di nav mêran de rêjeya qelewbûnê/talibûnê ji sedî 20,5; di nav jinan de ji sedî 41,0 e.[877] Li gor daneyên TUÎKê (Saziya Statîstîkê ya Tirkiyeyê) yên sala 2012an li Tirkiyeyê ji sedî 20,9ê jinan û ji sedî 13,7ê mêran qelew/tali (obez) ne. Bi giştî jî li Tirkiyeyê rêjeya qelewbûnê/talibûnê ji sedî 17 ye.[878] Qelewbûn/talibûn, wekî nexweşîneke modern dertê pêşberî me û ji bo pêşîlêgirtina wê jî hin rê û rêbaz hene:

Yek jê li ser hîmê liv û tevgerînê ye. Ya din jî li ser parêz

875 İrem Sezen, Melikşah Turan, Afşin Ahmet Kaya, "Türkiye'deki Suriyeli Misafirler ve İlişkilendirilen Bulaşıcı Hastalıklar", *Gümüşhane Üniversitesi Sağlık Bilimleri Dergisi (GÜSBD)*, 2018; 7: 119-127.

876 Sema Atilla, "Kronik ve Dejeneratif Hastalıklarda Beslenme", *Halk Sağlığı Temel Bilgiler (818-827)*, Hacettepe Üniversitesi Yayınları, Ankara 2006.

877 Halk Sağlığı Genel Müdürlüğü, *Türkiye Beslenme ve Sağlık Araştırması-2010*, https://hsgm.saglik.gov.tr/tr/obezite/turkiyede-obezitenin-gorulme-sikligi.html (01.12.2019).

878 www.saglik.gov.tr/TR,11692/obezite.html.

(perhîz) û bikaranîna hin riwekan e. Lêbelê wekî gelek deverên Tirkiyeyê, ji bo Semsûrê jî mirov nikare bêje ku gel di warê pêşîlêgirtina qelewbûnê/talibûnê de bi ser ketiye. Mixabin, her ku diçe qelewbûn/talibûn zêde dibe. Li herêma Semsûrê, ji ber şert û mercên avhewayê çandeke xwarinê ya li ser hîmê goştê sor, xurekên şêrîn û xurekên genimîn heye.[879] Her weha çanda firinê jî berbelav e. Hema bêje li serê her kuçeyê firineke nanê pîde heye. Mînak, nifûsa navendê 253.000 e, lê 375 firin lê hene. Yanî serê 675 kesan firinek dikeve.[880] Lêbelê nanê sêlê ku li Semsûrê pir tê çêkirin û xwarin, ne daxilî vê hejmarê ye. Nexasim li kesên navenda bajêr -piraniya wan jin in- ji ber bêtevgeriyê û xweykirineke serobero pirsgirêka qelewbûnê/talibûnê û obezîteyê derketiye holê.

Wezareta Tenduristiyê, ji bo pêşîlêgirtina li qelewbûn/talibûnê bi hin liv û tevgeran û xweyîkirineke yeksengî hin spotên cemaweriyê amade kirine. Ligel van spotan, di hin qenalên taybet ên televîzyonan de tim û tim reklama hin nojdariyên taybet tên kirin. Ev yek jî eleqeya ji bo etaran zêde kiriye. Ev nojdariyên taybet ku bêyî rewşa tenduristiyî ya laşî, derûnî û fizîkî esas bên girtin tên bikaranîn, lewma car heye tesîreke nebaş li tenduristiya mirovan dike. Her weha ev hewldanên ji bo kêmkirina qelewbûn/talibûn û obezîteyê jî nîşan didin ku bijîşkiya gelêrî ne tiştekî sabît e.

### Xwarina Axê

Di bijîşkiya gelêrî de ax, cihekî girîng digre. Ax, ji aliyê gel ve wekî tiştekî pîroz tê pejirandin.[881] Ji aliyê olî ve, li gorî Îslamê mirov ji axê çêbûne û ew ê herin bin axê; dîsa bibin ax. Ax him hebûnê, him bereketê him jî hêzê temsîl dike. Di bijîşkiya gelêrî

879 Mehmet Öncü, *Cemile Adıyaman Mutfak Kültürü*, Tekin Çifçi (Editör), ATAV Yayınları, Adıyaman 2015.

880 Adıyaman'da Yemek Kültürü, www.adiyaman.edu.tr/Adiyaman/Adiyaman-Yemek-Kulturu (20.10.2018).

881 Recep Tek, "Anadolu Türk Halk Hekimliğinde Toprak", *SEFAD*, 2018; 39, r. 189-204.

de ax şifa ye, derman e. Li gorî herêm û nexweşiyan cureyê axê û rêbaza bikaranîna axê jî diguhere. Carinan tenê tê bikaranîn; car caran di avê de tê helandin û ava wê tê vexwarin, dikin herî û di laşê xwe didin, germ dikin û didin bin zarokan, tifê dikin û di birînan didin, wekî dermanekî direşînin dora malan û hwd. Ax, di dema zêristaniyê de, di ziyaretan de, di dema dermankirina birînan de jî tê bikaranîn.[882]

Jinên ducanî û zarokên piçûk carinan axê dixwin. Li gorî bijîşkiya modern ya îro sedema vê yekê kêmasiya madenên çînko, sifir û hesinê di laşê mirov de ye.[883]

Li herêma Semsûrê dema ku zarok axê dixwin berê ji wan re dixeyidin. Heger xwarina axê berdewam bike ji bo ku zarok axê nexwin -heger hinekî mezin bin- çevrînokan[884] didin dest wan da ku xwe bi wan tiştan aware bikin. Hin kes jî dims û şerbeta dimsê, bastêq, kêsme û hwd. tiştên şêrîn bi wan didin xwarin û vexwarin. Heger xwarina axê berdewam bike, wan dibin ber ziyaretan.[885]

Li Enqereyê zarokên ku axê dixwin tînin ber ziyareta Toprak Baba, berîka wî tijî ax dikin û dibêjin, *"Heta ku ji te tê bixwe!"* Zarok têra xwe dixwe û careke din jî naxwaze ku bixwe.[886] Li Mersînê axa dora ziyareta *Hubban Dede* didin zarokan da ku bixwin. Li gorî baweriyê zarok ji wê rojê û pê ve nema axê dixwin.[887]

## Çavêş (Trahoma)

Çavêş, bi navê xwe yî tibî trahoma, mîqropgirtina çavan e. Nexweşîneke mayînde, girîng û vegir e. Ev nexweşîn ji bin ve dest pê dike û her diçe di pêlûya çavan û korneayê de dibe

---

882 Jêder: 8, 25, 26, 36, 41, 59, 64, 78.

883 Gülpınar Akbulut, "Türk Kültüründe Toprak Yeme Alışkanlığı (Jeofaji): Arguvan'dan Örnek Bir Çalışma", *Acta Turcica,* 2012, 302-315.

884 **Çevrînok**: Qidamên wekî leblebî, dendik, mewîj û hwd.

885 Jêder: 9, 30, 38, 45, 95, 104, 112, 124, 157, 164.

886 Temizsoylu, *Ankara Halk Hekimliği,* r. 77

887 Mustafa Sever, *Mersin Halk Hekimliği,* 2001.

sedema werimîn û sorbûnê (komplîkasyon).[888] Pêlûyên çavan hem ji derve hem jî ji hundir ve diwerimin. Çav sor dibin.

Hin kesên navsere ku çavên wan diêşin û sor dibin, ji berê heta niha ji bo çareseriya çavêşê hin derman hatine bikaranîn. Yek ji wan amûran hine ye. Bikaranîna hineyê ya ji bo êşa çavan kevneşopiyeke gelekî kevin e. Tê zanîn ku hîn di sala XVIan de hine hatiye bikaranîn. Hatiye bawerkirin ku gava hine bi ava germ were nermkirin û li serî bê kirin wê çavêş baş bibe. Di sedsala XVIan de hekîmê Tirk yê bi nav û deng Îbrahîm bîn E*lî Îffet Enqerewî*, di berhema xwe ya bi navê *Menafi ûn-Nas* de ji bo çavêşê dibêje, *"Ji bo çavan, hineya bi ava kelandî tê histiran li serî tê dan."*[889]

Li gor lêkolînekê, nexweşîna çavêşê hîn di dema vegera sefera Sultan Selîmê Osmanî ya ji Misrê dest pê kiriye. Di salên 1920an û pê ve waqieyên çavêşê zêde bûne. Ji ber ku di sala 1919an de 2609 nexweşên çavêşê vegeriyane nav Tirkiyeyê. Bi taybetî li herêma Semsûr, Meletî, Entab û Rihayê gihîştiye asta jorîn. Wek mînak; di sala 1934an de li Semsûr û Bêsniyê rêjeya çavêşê gihîştiye ji sedî 80yî; li Entabê ji sedî 71an.[890] Gel jî, li dijî belavbûna çavêşê bi qasî zanîna xwe rêbazên bijîşkiya gelêrî pêş xistine.

Di nav Kurdan de, piranî jinên navsere dema ku çavên wan û serê wan diêşe serê xwe hine dikin. Hineya toz, hinek qurnefîl jî tevlê dikin û bi hinek av mist didin. Wekî pilorê dibe. Wê hineyê di por û serê xwe didin û paçikekî ango kitanekê didin ser û girêdidin. Ew hine çend saetan, carinan jî ji êvarê heta sibehê, li ser serî dimîne. Piştre serê xwe dişon. Wisa tê bawerkirin ku hine êşa çavan kêm dike.[891] Wekî tê zanîn, hine ji berê heta niha wekî boyaxê jî tê bikaranîn:

888 İnci Hot, "Ülkemizde Trahomla Mücadele", *T Klin Tıp Etigi-Hukuku-Tarihi*, 2003, 11: r. 22.

889 Demirhan Erdemir, "Kına'nın Türk Tıbbi Folklorundaki Yeri", r. 155-159.

890 Sevilay Özer, "Cumhuriyet'in Trahomla Mücadelesi", *Ankara Üniversitesi Türk İnkılâp Tarihi Enstitüsü Atatürk Yolu Dergisi*, 54, Bahar 2014, r. 121-152

891 Jêder: 18, 25, 26, 38, 55.

"Ki çav biêşe, merî nikane derkevî ber royê, dermanê wê hene ye. Mîna ku meri heriyê di dîwarekî bide, gereke merî serî xa jî hene bike. Min hunga kir, serê mi û çavê mi xaş bû. Dest serêşê û çavêşê meha mi nikariwû derkevim ber royê."[892]
"Êk cara çavê meriya diwerimin. Giya hewês heye. Ûnin bidin ser, werimê dadixe. Bi xagi bidin ser."[893]

Li hin deveran, tê bawerkirin ku gava *"giya hewês[894]"* bi xavî deynin ser çav, wê çavêş baş bibe. Li gorî hin jêderan jî dermanê çavêşê şîrê dê ye. Rojê du caran her çavekî du sê dilop ji şîrê dayikê dixinê. Divê şîr teze be ango çawa ku ji memikan hate dotin bikeve çavan.[895]

Gelê li herêmê ji bo êşa çavan dermanê sor bi kar aniye. Ev derman berê ji aliyê etaran ve hatiye firotin. Taybetiya vê dermanî ev e ku dema ku dikeve nav avê dihele û rengê avê diguherîne ser soriyê. Piştî ku derman hatiye helandin, ew ava parzûn kirine û xistine çavên ku sor bûne.[896]

Îro, pêkanînên ku li jor hatine rêzkirin kêm caran têne bikaranîn. Gel dema ku çavên wan diêşe paçikekî paqij bi hinek çay şil dike û dide ser çavên xwe.[897] Heger çav baş nebe diçe nexweşxaneyan, cem bijîşkan. Melhem û dermanên ku bijîşk pêşniyar dikin bi kar tînin. Nexasim jî ji bo perdeya çavan, (kataraktê) ku wekî ewrekî tarî yê dikeve ser çavan, derfetên tiba modern tên tercîhkirin.

Li Mêrsîn û derdora wê ji bo nexweşînên çavan ava dirîreşkan bera çavan didin. Koka zereşkê (xerok/xîrok) tê kelandin; tê sarkirin û piştre ji bo çavan tê bikaranîn.[898] Li Çorûmê kartolên qeşartî datînin ser çavan.[899]

892 Jêder: 23.
893 Jêder: 27.
894 Pelhewês, hefttûzik.
895 Jêder: 5, 27, 75, 85.
896 Jêder: 1, 8, 20, 23.
897 Jêder: 14, 30, 32, 35, 36.
898 Sever, *Mersin ve Yakın Çevresi Halk İnançları ve Halk Hekimliği*, r. 149.
899 Tozlu, Çorum İli Halk İnançları ve Halk Hekimliği, r. 65.

## Hal

Derbarê vê nexweşînê de agahiyên zelal di dest me de nînin. Lewra ev nexweşîn ji zû ve ji nav gel rabûye. Lêbelê li gorî agahiyên ku ji devê jêderan hatine wergirtin bi gumaneke mezin *"hal"* navê nexweşîna *"weba"*yê ye. Em jî dê di vê wateyê de bi kar bînin. Ji aliyê hin kesan ve wekî "hêl" jî hatiye binavkirin. Hal (weba), ji ber heywanên kojer ên wekî mişkan an jî ji ber mîqrobeke li pişikê peyda dibe û nexweşîneke vegir e.[900] Dibe sedema mirina mirov û heywanan. Li gor çavdêriyên hatine kirin, piraniya kesên temenê wan di biniya 60 salî de hay ji vê nexweşînê tunene. Li Semsûrê, 60-70 sal zêdetir e ku ev nexweşîn çênebûye.[901]

Li gorî hin çavkaniyan, hal di navbera salên 1894 û 1912an de li seranserê cîhanê belav bûye û digel sekteya ku xistiye nav jiyana çandî, aborî û civakî bûye sedema mirina ji 11 milyonî zêdetir mirovan jî.[902]

Hal, di demên berê de, car caran di nav gel de xuya bûye û xisareke mezin daye civakê. Bi hezaran kes ji ber nexweşîna halê mirine. Bi taybetî jî zarok. Wisa bûye ku di malekê de sêçar zarok di nav çend heyvan de bi vê nexweşînê mirine. Li gorî jêderan di nexweşiya halê de, mirov ji xwarinê û ji taqetê dikeve; rûyê mirovan zer dibe; germa laşê mirov zêde dibe, mirov ta digre. Paşê laşê meriv nexweş reş dibe. Lê balkêş e xwîdan jî zêde ye; piraniya kesên ku dikevin nav lepê halê dimirin.[903] Çend agahiyên ku ji jêderan hatin girtin ev in:

> "Hal hewû; kurik zer dibûn, reş dibûn, nav lê diçû dimirin."[904]
> "Hal" hewû. Ta digirtin. Meriyê gir jî pê diketin û dimrin."[905]
> "Ku kurik bi hêl diketin kumekî reş hewû, ew didan seri. Li

---

900 Hikmet Özdemir, *Salgın Hastalıklardan Ölümler (1914-1918)*, Türk Tarih kurumu Yayınları, Ankara 2010, r. 22-23.

901 Jêder: 7, 14, 24, 53.

902 Nalan Turna, "İstanbul'un Veba ile İmtihanı: 1811-1812 Veba Salgını Bağlamında Toplum ve Ekonomi", *Studies of the Ottoman Domain*, 2011; 1 (1): 1-36.

903 Jêderler: 14, 36, 87, 96, 133.

904 Jêder: 6.

905 Jêder: 23.

Axçaliyê û Cêlika hewû."[906]

Nexweşên bi hal dikevin ji civakê têne tecrîdkirin. Ew yek jî rewşa nexwaşan hîn xerabtir dike. Lewra bi gotina nav gel, *"Bîhn dikeve hestiyê wan. Bîhna miriyan li wan tê."* Nexweşiyê û tecrîdkirina nexweşan bandoreke ewqas zêde li herêma Semsûrê kiriye ku halê di nav gotinên pêşiyan de jî cihê xwe girtiye. Dibêjin, *"Merî ketî hala kes nawê were mala."* Lewra kesê/a ku bi halê ketiye diranê wî/ê diweşin, porê wî/ê diweşe, goştê laşê wî/ê zer û reş dibe. Kesê/a ku bi vê nexweşiyê dimire laşê wî/ê zû reş dibe. Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de çareseriya vê nexweşiyê tuneye. Tenê wek nistiyekê li gundê Axçeliyê ocaxek hebûye, kumekî heciyan î reş hebûye. Dema ku zarokek bi hal ketiye, çûne ew kuma anîne û ji bo çend rojan dane serê zarok. Hêvî kirine ku bi awayî hal derbas bibe. Li gorî agahiyên ku ji jêderan hatine berhevkirin, heta salên 1940an jî hal li Semsûrê hebûye û gelek kes bi vê nexweşiyê mirine. Ne tenê mirov her weha gelek sewal jî bi halê mirine.[907]

## Çor

Derbarê vê nexweşînê de jî agahiyên zelal nînin. Tiştên ku têne gotin tenê wekî gotegot û bihîstikan (rîwayet) e. Li gorî van bihîstikan çor, nexweşîneke vegir e. Kesên ku bi vê nexweşiyê ketine di demeke kin de mirine. Ji ber vê yekê jî kesên nexweş ji civakê hatine tecrîdkirin. Xelasiya mirovan a ji nav lepên vê nexweşînê wekî mucîzeyê hatiye dîtin. Peyva çorê, îro di nav çanda gelêrî de wekî nifirekê dijî. Dema ku xerabiya yekî/ê dixwazin dibêjin, "Bila çor bikeve mala wî/ê."[908]

Her weha ji cureyekî nexweşîna sewalan jî peyva çor tê bikaranîn. Dema ku ev nexweşîn dikeve nav sewalan, bi taybetî sewalên koxê (wekî mirîşk, dîk, qaz, werdek, şamî û hwd.) dibê-

906 Jêder: 146.
907 Jêder: 6, 18, 23, 27, 146, 161.
908 Jêder: 15, 21, 25, 35, 44, 60, 78.

jin, "Çor ketiye nav mirîşkan." "Çor ketiye nav dewaran."[909] Bi qasî ku ji van agahiyan tê fêmkirin çora mirovan û ya sewalan ne ji hev e. Lewra çora mirîşkan (êşa mirîşkan) îro jî heye. Dema ku li deverekê xuya dike, di demeke kin de hemû mirîşk û hwd. pê dimirin. Lê hin taybetmendiyên çoran hevpar in. Wekî germa laş ya zêde, ricifîn, di demeke kin de mirin û hwd.

## Êşa zirav (Jana Zirav-Êpirmeynî)

Êşa zirav ango jana zirav/êpirmeynî, nexweşîneke xedar û kujêr e. Li gelek deveran wekî "werem" jî tê naskirin. Sedema vê nexweşiyê di nav gel de nayê zanîn. Lêbelê îro bijîşkiya nûjen teqez kiriye ku sedema vê nexweşînê cureyekî mîqroban e. Piranî di pişikê de bi cih dibe lêbelê xisarê dide lebatên din jî.[910] Heger neyê dermankirin mirovan dikuje. Digel ku kêm bûye jî hîn di nav gel de êşa zirav heye. Li hemû welatên dinyayê ev nexweşîn heye. Li dinyayê her sal 8,4 milyon kes bi vê nexweşiyê dikevin û ji wan 2 milyon kes jiyana xwe ji dest didin.[911] Li gorî xebateke ku di sala 2008an de hatiye meşandin, li Tirkiyeyê 20.526 kes bi jana zirav ketine. Ango ji 100.000 kesî 28 jê bi vê nexweşiyê ketine. Ji van kesan 13.225 kes mêr in; hejmara jinan jî 7.301 e.[912] Ev hejmar berê gelekî zêdetir bû, niha roj bi roj kêmtir dibe. Ji ber vegirî, xedarî, pêvajoya dirêj û biha ya nojdariyê, şopandina nojdariya vê nexweşînê di saziyên tenduristiyê yên fermî de ji serî heta binî belaş e. Dewletê ji bo vê nexweşiyê sazî û dezgehên taybet ava kirine. Wekî dîspanserên weremê.

Ev nexweşîn vegir e û domdirêj e. Kesê/a ku bi vê nexweşiyê dikeve demeke dirêj dikuxe, ji aliyekî ve germa canê wî/ê heye û ji aliyê din ve jî bi şev xwîdanê dide. Sînga wî/ê diêşe. Ji xwarinê qut dibe û roj bi roj jar dibe, dihele. Dema ku nexweşîn giran

909 Jêder: 1, 5, 18, 40, 41, 62, 74.

910 İlknur Aydın Avcı, "Tüberküloz", *Enfeksiyon Hastalıkları*, r. 204.

911 Şeref Özkara, Tüberküloz (Verem) Hastalığı, http://www.verem.org.tr/kisa_bilgi.php (15.10.2018).

912 T.C. Sağlık Bakanlığı Halk Sağlığı Genel Müdürlüğü, *Türkiye'de Verem Savaşı 2018 Raporu*, Ankara 2018, r. 5.

dibe kesê/a nexweş bi kuxikê re xwînê jî diavêje.[913]

Kesên ku bi vê nexweşiyê ketibin di demeke kin de nexweşiyê digihînin kesên derdora xwe. Bi rêya hewayê, bi firaqan û hingavtinê (temas) mîqroba nexweşiyê belav dibe. Jêder K. H. ku çar xwîşk û birayên wê bi jana zirav mirine, serpêhatiya xwe weha dibêje:

> "Êpirmeynî? Werem bû. Çar xayng û birê mi pê mirin. Bi şev û ro dikuxiyan. Siftê me go qey serma girtine. Paşê gotin va êpirmeynî ye, mot bidinê. Me dayê newû. Hena go postî miya bikşînînê. Me rawû hung jî kir. Ro bi ro li hember me diheliyan. Niva nikawûn kevçiyek şîv jî bi xwe bixwin. Me bi ser va dikir. Him xwi didan, him jî ar lê diçû. Songi jî mirin."[914]

Dema ku malbatan jana zirav nas dikir, heger derfetên wan hebûna diçûn nexweşxaneyan û serî li bijîşkan didan. Lêbelê kesên ku derfetên wan tunebûn ango nexweşîn nas nedikirin serî li bijîşkiya gelêrî didan. Ji ber ku germa laşê wan zêde bû, nexweş bi ava sar dişûştin. Car caran nexweş dixistin nav çermê sewalan, piranî jî yê mî û bizinan. Ji bo ku xwîdan bide û nexweşînê ji nava xwe biavêje.[915]

Ji bo ku pêşiyê li jarbûnê bigrin dims, hingûv, bastêq û hwd. xwarinên şêrîn didan nexweşan. Ava hestiyan bi ser ve dikirin ango bi wê avê bilxur çêdikirin. Wisa dihate bawerkirin ku wê nexweş bi vî awayî baş bibe. Lêbelê gelek caran ji ber ku dereng diman, mirov dimirin. Piranî jî zarok û pîr bi vê nexweşiyê dimirin.[916]

Ligel hemû hewldanan, dîsa jî werem çêdibe. Lêbelê bi saya teşxîs û nojdariya pêşwext rêjeya mirinê kêm bûye.

## Şewata ji ber agir

Ji kifşkirina agir ya ji aliyê mirovan ve heta niha, têkiliya

---

913 Jêder: 9, 33, 41, 47, 68, 103, 140, 158.

914 Jêder: 20.

915 Jêder: 1, 5, 7, 8, 15, 108, 110, 126, 131.

916 Jêder: 17, 60, 82, 89, 90, 108.

mirov û agir ji hev qut nebûye. Gelek caran ji ber qezayan agir û laş digihêjin hevdu û ev yek jî dibe sedema şewatê. Bandora şewatê li gorî dema hingavtinê diguhere. Gelek caran bi bêhemdî mirov devereke laşê xwe dişewitîne. Li gorî pileya agir xisara şewatê ku dide laşê mirov jî ewqas zêde dibe. Gelek caran şewat dibe sedema mirina mirovan. Heger nekuje jî şopên mayînde li ser laşê mirov dihêle.[917]

Li herêma Semsûrê li gorî asta şewatê pêkanînên dermanên Kurmancî/Kurdewarî jî diguherin: Heger asta wê li jêr be, devera şewitî tenê sor dibe. Lebata ku şewitiye ji bo demekê didin ber ava sar an jî hinek qeşa didin ser.[918]

- Asta şewatê zêde be û nexweş hatibe diyarê mirinê, serî li pêkanînên hekîmên Kurmancî didin. Hekîm, ji zerikê hêkan, dendikê behîvên tahl, kakilên gûzan û rûnê zeytê dermanê Kurmancî çêdikin. Zerikê hêkên mirîşkan heta ku wekî rijiyê bibe di taweyekê de diqewirînin. Car caran jî ji dêvila zerikê hêkan dendikê behîvên tahl ango kakilê gûzan tê bikaranîn. Piştre hinek rûnê zeytê tevlê dikin û heta ku wekî melhemê bibe li hev dixin. Sar dikin. Bi baskê dîkan an teyran wê melhema ku hatiye amadekirin heta ku birînên şewatê baş bûne rojê carekê, du caran li birînan didin. Heta birîn baş bibe serê nexweş naye şûştin. Pêwîst be bi paçikekî şil tê paqijkirin.[919] Yek ji jêderan Zîna Mihemed Elî serhatiya birayê xwe, Evdila, weha vedibêje:

> "Ê Evdî me, te dî li eskeriyê şewitî... Çend meha li Enqerê ma. Cihawa me dan[920] û ew şandin mal. Me mîna meyîtekî ew anî mal. Ki mêş biçûya ser qîrînî vê diket. Gotin, dendikê bayîva û kakilê gûza bîşewitînin, mîna rijiyê bikin. Paşê hewik rûn

---

917 H. Volkan Acar, "Moğollardan Anadolu'ya Bir Halk Hekimliği Tedavi Yöntemi: Deriye Çekme", *Lokman Hekim Dergisi*, 2018; 8 (1): 33-46.

918 Jêder: 4, 17, 19, 24, 85, 156.

919 Jêder: 1, 5, 7, 8, 15, 108, 110, 126, 131.

920 **Cihawdan:** Bersivdan. Di bijîşkiya gelêrî ya herêma Semsûr û Rihayê de bi wateya bêçaretî û bêhêwîtiyê tê bikaranîn. Nexweşê ku cihaba wî hatibe dayîn, êdî nexweşê mirinê ye, tiştekî ku bijîşk bikin nemaye. Nexweşên wisa tînin malê. Dibêjin, *"Bila rojên xwe yên dawî di nav zar û zêçê xwe de derbas bike."*

tevê bikin, tevdin; mîna melemê bikin. Bi perî dîka tê bidin. Ê pirê jî me zerikî hêka di tewê de diqewirand, mîna rijiyê dikir. Paşê hewk rûnî zêtûna jî tevlê dikir. Diwû, mîna melemê diwû. Bi perî çûga me tê dida. Bi vî avayî me ew rakir. Şikir î niha rehet e."[921]

- Kirêca neşewitandî tê şilkirin. Piştî ava wê heft caran tê guherandin, di nav potekî de tê dawerivandin. Dûre zeytê tev li nav dikin, li hev dixin û di birînê didin.[922]

Di bijîşkiya gelêrî ya Mêrdînê de ji şima, findê spî, rûnê zeytê, rîf ampul û antîbiyotîka toz dermanê şewatê çêdikin. Heta ku şopa şewatê ji holê rabe wê melhemê tê didin.[923] Li Mêrsîn û derdora wê koka nebata bi navê pilnarê dikelînin û çança (dirdûya binî) wê wekî melhemê li cihê şewitî didin.[924] Li Îranê çay-i sebz (çaya kesk), çay-kuhî (çaya çiyê), gul-î hemîşe Behar (cureyekî çîçekmast) û hwd. ji bo şewatê têne bikaranîn.[925]

## Birîn/Birîndarî

Birîndarî, dema ku laşê mirov bi tiştên termal, mekanik, ceryanî yan jî akûtên kîmyewî re rû bi rû bimîne yan jî ji unsûrên jiyanî yên wekî amûrên birekî çi bi *"zanetî"* çi jî *"bi nezanî"* çêdibe.[926]

Di jiyana rojane de mirov ji ber gelek sedeman birîndar dibe. Bi taybetî ew kesên ku amûrên tûj/birekî ên wekî kêr, sator,

921 Jêder: 140.

922 Yağınlı, *Adıyaman Merkez Ağzı ve Kültürü*, r. 325.

923 Tekin Çifçi, Halit Demir, "Mardin İli Geleneksel Halk Hekimliğinde Yanık Uygulamaları", *ISPEC Journal of Social Sciences & Humanities*, Year 4/ 2020, Volume-4, Issue-4, p. 289. (pp. 285-295.) doi.org/10.46291/ISPECIJSSH-vol4iss4pp285-295.

924 Sever, *Mersin ve Yakın Çevresi Halk İnançları ve Halk Hekimliği*, r. 162.

925 Muhammed Efşar, Said Vefaineyad, Mihri Şadi, Rıza Kadiri, "Giyahan-ı daruyi-i Muessır Der i Hıyam-ı Zehmha-yı Suhtegi Der Flor-i gıyah-ı İran", *Mecelle-yi İlmi-yi Danişgah-ı Ulum-u pizişki-yi Gürgan*, Payîz 1396; 3, r. 1-14.

926 Hilal Özcebe, "Yaralanma Kontrol ve Korunma Programları ve Güvenli Toplumlar", *Halk Sağlığı Temel Bilgiler*, Hacettepe Üniversitesi Yayınları, Ankara 2006, r. 686.

şûjin, derzî, birrek, das û hwd. dixebitînin gelek caran dest, ling û piyên xwe dibirin xwe birîndar dikin. Car caran jî ji ber qezayên trafîqê, ketina ji devereke bilind û hwd. birîndarî çêdibe. Heger mirov di dema birîndarbûnê de li derveyî malê be, rewş xerabtir e. Ji ber vê yekê jî mirov bi rehetî dikare bibêje ku derman û çareseriyên ku di mijara birînan de têne bikaranîn piraniya wan ji tecrûbeyên şivan, gavan û gundiyan hatine holê. Di demên weha de divê berê xwîna ku diherike were rawestandin.[927] Ji bo vê yekê jî li gorî derfetan hin pêkanînên bijîşkiya gelêrî têne bikaranîn:

- Heger birîn kûr be, qayîşeke çermînî tînin û bi pozê kêrê hêdî hêdî rêş dikin. Ew perçeyên hûr ên ku ji qayîşê rakirine dixin devê birînê û birînê girêdidin.

> "Me li ber pêz kayîşa xa bi kêrê rêş dikir, hewik çerm lê radikir û dixist devî birînê."[928]

- Li hin gundan berî ku birînê bipêçin bi ava simaqê dişon.[929]
- Ji bo birînan, benîştê dara kizwanê[930] tevî hinek sabûn dikin, distrên û dixin devê birînan.

> "Me benîştê benîştokê bi sawûnê va li hev dêxistin dikirin melem û dikirin devî birînê."[931]

Wekî ku ji mînakan jî xuya dibe, di nojdarî û dermankirina birînan de sê rêbazên sereke xuya dibin: Yek jê kewandina birînê ye. Bi xwê, mîz, tirş (ava balicanan), vê dawiyê jî bi qolonyayê û hwd. birînê dikewînin. Wisa tê bawerkirin ku birîna ku hatiye kewandin kul nabe û zû baş dibe.[932]

---

927 Jêder: 10, 11, 25, 48, 70, 94, 119.

928 Jêder: 30.

929 Jêder: 2, 3, 17, 20.

930 Li herêmê li çiyayên asê di nav daristanan de gelek darên benîştokê bi awayekî xwezayî şîn hatine. Di nav gel de ew dar wekî dareke gelekî kêrhatî tê zanîn. Ji pel, fêkî, benîşt heta bi koka wan gelekî sûdewer e. Li gorî gelê herêmê dema ku kew bi guleyên piçûk (balme) birîndar dibin, diçin bi nikulê xwe ji wî benîştî jêdikin û dixin devê birînên xwe. Bi wî rengî ji mirinê xelas dibin.

931 Jêder: 110.

932 Jêder: : 3, 4, 5, 7, 8, 10, 58, 59, 60, 61, 62.

- Rêbaza din xitimandina birînê ye. Li gorî zanîn, demsal û derfetan devê birînê bi hin tiştên wekî titûn, xwar, toza maziyan û hwd. dixitimînin. Bi vî awayî rê li ber herikîna xwînê digrin.[933]

- Rêbaza dawî jî pêçan e. Birînê li gorî derfetan bi paçikekî, benekî û hwd. dipêçin. Carinan jî li gorî rewşa birînê du yan sê pêkanînan bi hev re bi kar tînin.

> "Li gundê Dîkîlcikê, wexta ku yekî li malê deriki xa birîn diwû, li birînê mêzi dikirin. Heger birîn nê pir kûr bûya xwara li ser dar û beştên xêni top dikirin û dikirin devî birînê."[934]

- Li gundên çiya, şivan pelên benîştokan/kizwanan berhev dikin û tînin malê. Hinekî ji wan ji bo zivistanê hişk dikin. Hinekî jî bi xavî dixin nav avê û dikelînin. Bi wê avê birînê baş dişon, piştre girêdidin. Wisa tê bawerkirin ku ew ava benîştokê hemû pîsî û gemara derdora birînan paqij dike û bi vî rengî bêyî ku birîn bibin kul baş dibin. Lewra, heger birîn kul bibe û kêmê bigre dê şopa wê bimîne.[935]

Berê ji ber karên kolberiyê (qaçaxî), kesên firar, neyartiyê û hwd. gelek şer û pevçûn çêdibûn. Ji ber vê yekê mirovên birîndar nedikaribûn serî li nexweşxaneyan bidin. Derbên gulleyan bi dermanên bijîşkiya gelêrî dihatin nojdarîkirin. Lêbelê gelek caran jî têk diçûn û birîndar dimirin.

Di dermankirina birînên ji ber gulleyan de, çend rêbazên sereke yên bijîşkiya gelêrî hene:

- Berê hewl didin ku xwînê rawestînin. Ji bo vê yekê jî, di jora birînê re girêdidin. Paçikekî paqij dixin devê birînê. Kêrekê germ dikin û birînê dax dikin da ku xwîn raweste.[936]

- Heger gulle di nav laş de mabe, kêrekê germ dikin û bi pozê kêrê gulleyê ji nav laş derdixin. Piştre rûn diqijirînin, berdidin devê birînê û girêdidin.[937]

933 Jêder: 1, 15, 16, 21, 36, 47, 80.
934 Jêder: 5.
935 Jêder: 2, 100, 104, 108, 128, 130.
936 Jêder: 30, 51, 58, 69, 84.
937 Jêder: 1, 9, 13, 70, 122.

"Heger qirşûn di nav lêş de mawe, kêrikê germ dikin û qirşûnê derdixin. Paşê hewik hevîr çêdikin, didin dorê devî birînê. Hewik rûnî malê diqijirînin û berdidin devî birînê. Dû va girêdidin."[938]

"Mot dikelînin, hewik şew jî tevlê dikin, mîna fitîlê çirê dikin, di devî birînê ra dajon êçi. Ew mota yawiş yawiş dihele. Him dikewîne him jî xaş dike."[939]

- Dimsê dikelînin wekî fitilê dikin, di devê birînê de datînin.[940]

- Şebê dikutin heta ku wekî ar(d) bibe. Dimsê jî li aliyekî dikelînin heta ku tîr bibe. Piştre herduyan tevlihev dikin û dixin devê birîna gulleyan. Tê bawerkirin ku şeb xwînê disekinîne û dims jî hêdî hêdî di nav birînê de dihele û birînê baş dike.[941]

Li Anadolê jî pêkanînên bijîşkiya gelêrî hene. Wek mînak, li Qonyayê, ji bo başkirina birîna gulleyê qetran (benîştê reş) wekî melhemê tê eciqandin. Piştre, ew benîştê ku hatiye amadekirin li ser devê birînê tê danîn. Li hin deveran jî zerika hêkê, heta ku rûn jê dertê tê qelandin. Rûnê wê ji bo başkirina birîna gulleyê û birînên din tê bikaranîn.[942]

## Perçivîna ji ber xwarinê

Hin xurek hene ku mirov diperçivînin. Wekî pîvazan, tiviran, fasûliyan, bilxur û hwd. Piştî xwarina van xurekan zikê mirov pê dinepixe, wisa dibe ku bêhna mirov diçike. Li herêmê di rewşên weha de çend pêkanînên bijîşkiya gelêrî ku têne sepandin weha ne:

- Kesên ku ji ber nepixînê aciz in, li ser xwe digerin. Heger meş kêr neyê bi ava sar serê xwe dişon. Ew jî kêr neyê hewl didin ku nava wî/ê here. Ji bo vê yekê jî hinekî rûn germ dikin

---

938 Jêder: 7.

939 Jêder: 24.

940 Jêder: 10, 24, 61, 62.

941 Jêder: 24, 41.

942 Bülent Çevik, Konya'da Halk Hekimliği Uygulamalarının Dünü ve Bugünü, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Cumhuriyet Üniversitesi SBE, Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Sivas 2008, r. 122.

û bi qasî kevçiyekî-du kevçiyan vedixwin. Yan jî dims û rûn li nava hev dixin û vedixwin.[943]

- Li gundên çiyayê Semsûrê di rewşa nepixîna ji ber xwarinê de ji bo ku nava mirovan paqij bibe hin kes pelên dara benîştokê (qizwan) di nav avê de dikelînin û ava wê vedixwin.[944]

- Kesê/a perçivî heger zarok be bi sabûnê û ava germ serê wî/ê dişon, zikê wî/ê mist didin. Hin kes jî di rewşên giran de ji bo ku werimandina zikê zarok zûtirîn dakeve hinek sabûn bi kêrê rêş dikin û ji maqata zarok re diajon nav rûviyên wî/ê.[945]

### Îlancix (Yilancix)

Îlancix, bi navê wê yê tibî erîzepel, nexweşîneke çermî ye. Li her devera laşê mirov dikare xuya bibe lê bêtir li ser rû, dest û lingan xuya dike. Ji ber cureyekî baqteriyan pêk tê û vegir e. Dema ku li mirovan peyda dibe, laşê mirov sor dibe, diwerime û agirê laşê mirov zêde dibe.[946] Nexweş dilerize, serê wî/ê diêşe, xwarin û vexwarina wî/ê kêm dibe. Mirov dibêje qey mar di nav tamarên meriv de digere. Ku êş pê digre bernade. Pir zû belav dibe û gelekî dereng baş dibe. Heger neyê dermankirin/nojdarîkirin dibe sedema mirina mirovan.[947]

Li Semsûrê û derdora wê, digel ku navê nexweşînê tê zanîn jî agahiyên derbarê bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî de yên di vê mijarê de gelekî bi sînor in.

- Li gundên Bêsniyê ji bo nojdariya îlancixê pîvazan hûr dikin, hinek arvanê cehê lê dixin û wekî pilorê dikin. Piştre li ser devera ku yilancix lê hatiye pahn dikin. Di heman demê de binê lingên kesê/a nexweş bi cîlateke paqij hêdika dibirin. Heta ku xwîn jê tê. Wisa tê bawerkirin ku îlancix li bedena mirov digere. Ew ê bigere û di binê lingê nexweş re derkeve derve. Nexweş dê bi vî awayî ji îlancixê xelas bibe.[948]

943 Jêder: 45, 66, 68, 89, 121.
944 Jêder: 7, 10, 18, 20.
945 Jêder: 9, 12, 14, 16, 17, 20.
946 Yasemin Saygın, "Yılancık (Erizepel) Nedir, Tedavi Yolları Nelerdir?", www.bilgihanem.com/yilancik-hastaligi-erizipel-nedir/ (20.10.2018).
947 Jêder: 2, 38, 39, 63.
948 Jêder: 98.

Li herêma Aydinê vê nexweşiyê bi rêya ocaxan derman dikin. Ew ocax bi "kevirên îlancixê" ku ji bajarê Mekkeyê anîne, nexweşînê derman dikin. Wan kevirên gilower di ser laşê kesê/a nexweş digerînin. Wisa bawer dikin ku îlancix ji ber wan keviran direve, ji xwe re rêyekê dibîne û ji laşê mirovan dertê.[949]

Li herêma Edeneyê ji bo îlancixê melhemekê ji qetran, sîr, pîvaz, rêxa gamêşan, boyax û qaşilê dara çamê amade dikin. Berê boyaxê û qaşilê çamê di firaqekê de dikelînin. Di firaqeke din de sîr, pîvaz û rêxa gamêşan ya hişk dikutin û tevlî wê avê dikin. Heta ku wekî melhemê bibe dikelînin. Berî ku wê melhemê di kulê bidin bi pozê cîlatê devê kulê xêz dikin. 18 rojan serê sibehê ji wê melhemê di kula îlancixê didin.[950]

## Kula Salê

Derbarê vê kulê de agahiyên zêde nînin. Bi qasî ku ji jêderan hatiye fêmkirin, kula salê jî kuleke vegir e. Li her devera laşê mirovan dikare derkeve. Hêdî hêdî goştê mirov dixwe û dirizîne. Wek çareserî hin giya dikutin û diavêjin ser birînê.[951]

Şîroveyên ku derbarê kula salê de hatine gotin bi kurtî weha ne:

> "Kula salê pir xiraw bû. Şûna wê kort dibû. Sîr tê didan. Heta salekê diajot."[952]
> Kula Salê, li dera giya dihat. Ser va xuya dike. Berber go, melemê reş tê bidin ê rehet bibe. Bi sing der dikirin."[953]

Ev kula ku li devereke mirovan derdiket, heta salekê baş nedibû. Gelek kes ji ber vê kulê dimirin. Li çermê mirovan derdiket. Bi ser ve piçûk e lê ji aliyê bin ve kûr e. Ev cihê ku kul dibe goştê wê dirize. Piştî ku kul wenda dibe, şopa wê kort dimîne. Bêhna xerab ji kulê tê. Wekî çareserî sîr dikutan û di birînê didan. Sîrê

949 Ülger, *Aydın (Merkez) ve Çevresinde Halk Hekimliği*, r. 77.
950 Gülnaz Savran, "Adana Bölgesinden Derlenen Bazı Halk Tıbbi Uygulamalarının Tıbbi Antropoloji Açısından Değerlendirilmesi". http://turkoloji.cu.edu.tr/CUKUROVA/sempozyum/semp_3/savran.pdf
951 Jêder: 45, 53, 132.
952 Jêder: 23.
953 Jêder: 8.

jî pir feyde nedikir. Diçûn li bajaran li bal porbiran (berberan) û dikanên etaran melhema reş dikirîn û dianîn di birînê didan.[954]

Li gorî agahiyên ku hatine dayîn kula salê dişibe nexweşîna rîşê lê ne ew e. Lewra tê zanîn ku kula rîşê ne vegir e û bêhna wê jî tuneye. Dibe ku kula salê û hefttûzik yek bin. Lewra, nîşaneyên her du nexweşînan dişibin hevdu.

## Satilcanî (Zatûrî)

Satilcanî (zatûrî), kêmgirtina pişikê ye. Lopek an jî beşek lopa pişikê ji ber baqteriyan nerihet dibe û kêm digre. Bakterî jî di nav de girêdayî hin mîkroorganîzmayan pêk tê.[955] Di nav gel de, derbarê vê nexweşiyê de agahiyên zelal nînin. Gelek kes vê nexweşiyê jî wekî cureyekî sermagirtinê dihesibîne. Lê ya rast her du ne yek in. Sedema satilcaniyê wîrûs û baqterî ne ku li pişikê bi cih bûne.[956] Nexweşîn wekî êşa qirikê dest pê dike, piştre her ku pêş de diçe, nîşaneyên wekî germbûna laş, ricifîn, cemidîn, kuxika ziwa, kelmûç (belxem), êşa sîng, reşbûna lêv, dest û lingan û hwd. xuya dibin. Satilcanî heger zêde pêş de neçûbe hêdî û hêdî bi xwe derbas dibe. Lê heger neyê dermankirin carinan mirovan dikuje.[957]

Li gorî agahiyên ku ji jêderan hatine wergirtin, taybetiyên vê nexweşiyê bi kurtî weha ne:

- Satilcan nexweşînek xetere ye. Bi taybetî dikare zarokan bikuje û kuştiye jî.
- Ev kesê/a nexweş dikeve, demeke dirêj û kûr kûr dikuxe. Bi kuxikê re belxema kesk û zer, heger nexweşîn pêş de biçe belxema bi xwîn ji devê nexweş dertê. Gelek caran bi belxemê re verişîn jî çêdibe.
- Germa canê wan gelekî zêde ye.

---

954 Jêder: 125, 138, 139.

955 Mesut Toğaçar, Burhan Ergen, Mehmet Emre Sertkaya, "Zatürre Hastalığının Derin Öğrenme Modeli İle Tespiti" *Firat University Journal Of Engineering*, 2019, 31.

956 "Zatürre Nedir?", https://www.medicalpark.com.tr/zaturre-nedir/hg-152 (01.12.2018).

957 Jêder: 2, 3, 8, 14, 32, 41, 87.

- Kesê/a nexweş di serî de sîng her deverê laşê wî/ê diêşe û ji taqetan dikeve.

- Di rewşên giran de bêhna mirovan jî diçikîne.

Li herêma Semsûrê ji bo çareserkirina nexweşîna satilcanê derman û nojdariyên sereke weha ne:

Xurekên ji sewalan wekî goştê mirîşkan, şorbeya bi ava goşt, ava hestiyan, ser û pê û hwd. didin nexweşê satilcanî da ku bi ser xwe ve were.[958]

- Xwarinên şêrîn yên wekî dims, mewîj, kêsme, benî, hêjîr û hwd. bi nexweş didin xwarin da ku taqeta wî/ê kêm nebe.[959]

- Ji bo ku germa laşê nexweş kêm bibe, wî/ê dibin kaniyên tayê û bi wê ava sar serê wî/ê dişon.[960]

- Ji bo ku xwîdan bide kayê dixin beroşekê û dikelînin. Piştî ku hinekî sar bû nexweş di nav wê avê de didin rûniştandin. Cilikekî jî diavêjin ser da ku baş xwîdan bide. Gelek caran jî nexweş dikeve nav nivînan û çend heb lihêv bi xwe werdide.[961]

Ji bo xweparastina ji satilcanê zivistanê cilên sitûr li xwe dikin û hewl didin ku nexweş nekevin. Li gorî baweriyê satilcanî tenê bi rêya sermayê digihêje mirovan.[962]

Piştî pêşketinên di qada tenduristiyê de êdî gelek kes dizanin ku çareserî li nexweşxaneyan û bikaranîna dermanên nûjen de ye. Gel di rewşên weha de serî li saziyên tenduristiyê dide.

## Jarbûn

Di warê zanistî de jarbûn, gava li gor temen û qamê, kîloyên mirovan di biniya rêjeya endeksa giranî û qama laş (0-18) de bin, wekî pirsgirêkeke tenduristî tê pejirandin.[963] Jarbûn, digel ku bi serê xwe ne nexweşiye lêbelê dibe ku nîşana hin nexweşînan be.

Jarbûn, ji nexweşiyekê bêtir wekî rewşeke nebaş tê pejiran-

958 Jêder: 7, 118, 144, 148, 150.

959 Jêder: 5, 7, 118, 119, 124, 147, 150.

960 Jêder: 9, 13, 36.

961 Jêder: 16, 17, 20, 29, 33, 41, 49, 52.

962 Jêder: 4, 5, 9, 27, 20, 54.

963 https://www.psychenet.de/tr/ruhsal-saglik/bilgiler/asiri-zayiflik.html (18.06.2018).

din. Lêbelê dema ku sal derbas dibin û mirov li gorî hemtayên xwe li paş dimînin, malbat dikevin nava xemê. Wê gavê serî li bijîşkiya gelêrî didin. Wekî derman, xwarinên ku zarok û mezinan xurt dikin didin wan. Di nav wan de, xwarinên bi goşt û şêrîn balê dikşînin. Xwarinên bi pîvaz û tirş ku bijiya (bîz) mirov vedikin pêşniyar dikin.

> "Hesîdê, cemîle, hevrişk, pelokê çêdikin. Pîvaz ê rind in. Îştahê kurikan vedikin. Avê goşt û hestiya didinê."[964]

Ava hestiyan didin zarokan. Xwarinên wekî, bilxur, birinc û hwd. bi wê avê çêdikin. Mirîşkan dikelînin û ava wan didin nexweşan. Xwarinên şêrîn ji zarokên jar re çêdikin. Heger pirsgirêk bidome û li ber jiyana asayî bibe astengî wê gavê serî li bijîşkiya nûjen û saziyên tenduristiyê tê dayîn.[965]

## Jehrîbûn

Jehrîbûn, ji ber hingavtina têkberên jehrî (toksîk) xerabûna peywirên laş ên asayî ye. Bi rêya hewayê, hingavtinê û daqurtinê jehrîbûn çêdibe.[966] Carinan ji ber pêvedana hin lawiran; lihevnehatina hin xwarinan, riwekên bijehr ên wekî kuvarkan; kevinbûn, xerabûna şîvan, xurekan; dermanên çandiniyê yên bijehr û hwd. mirov jehrî dibe. Wê gavê bedena mirov wan xwarinan napejirîne û wekî bertekekê diavêje derve. Carinan jî gêja mirov diçe û bêhna wan diçike. Di bijîşkiya gelêrî ya herêma Semsûrê de, ji bo kesê/a ku jehrî dibe, hewl didin ku wî/ê verişînin. Ji bo vê yekê jî mast an jî şîr didin kesê/a bi guman. Li gorî bawerî û tecrûbeya civakê, şîr û mast jehrê dikin penêr û derdixin derve.[967]

Li herêmê, jehrîbûnên ji ber pêvedana maran, dûvpişkan û

---

964 Jêder: 28.
965 Jêder: 8, 15, 16, 21, 56, 67, 73, 87, 89, 11, 116.
966 H. Fazıl İnan, Zülfinaz Kurt, İlknur Kubilay, *Temel İlkyardım Uygulamaları Eğitimi Kitabı*, T.C. Sağlık Bakanlığı Temel Sağlık Hizmetleri Genel Müdürlüğü İlkyardım Ve Acil Sağlık Hizmetleri Daire Başkanlığı, Ankara 2011, r. 14.
967 Jêder: 1, 5, 38, 85.

kuvarkan berbelav in. Pêkanînên bijîşkiya gelerî yên derbarê pêvedana mar û dûvpişkan di beşa pêvedanê de hatiye nîqaşkirin. Gel, ji bo ku kuvarkên bijehr û yên bêjehr ji hev derxe, wan dixe nava şîr. Heger şîr biqete dê zanibin ku ew kuvark jehrî ne; heger şîr neqete, bi nejehrîbûna wan kuvarkan qanih dibin. Kuvarkan dişon, dipêjînin û bi ewlehî dixwin. Piştî kuvark xwarin, ji bo ku mirov jehrî nebin dev, mast û hwd. venaxwin. Her weha dema ku masiyan dixwin ligel masiyan dev venaxwin. Wisa tê bawerkirin ku masî û dev; kuvark û dev, mast li hev nayên.[968]

> "Min bi çavê serî xa dî ye. Dew û masi li hev nên. Ki masiyê kevin bin tê cîliyê de pê zêrlemîş biwî. Ê te bikuje."[969]

Carinan jî mirov ji ber sedemên cihê jehrî dibe, dilê wî/ê li hev dikeve lê nikare verişe. Di rewşên weha de, tiliya xwe dixin qiriqa xwe û hewl didin ku xwe verişînin. Piştî ku verişiyan hinek av di devê xwe werdidin û hinekî radiwestin. Piştre hêdî hêdî xwarina xwe dixwin. Hin kes jî hinek rûn vedixwin da ku zikêşî bibin û biavêjin derve. Lêbelê gelek caran jî kesê/a ku jehrî bûye, ji ber ku bi zorê hatiye verişandin, jiyana wan dikeve bin xetereyê. Hin ji wan jî jiyana xwe ji dest didin.[970]

Heger jehrîbûn dirêj bidome, nerihetiya dîtin û têgihîştinê li nexweş peyda dibe, liv û tevgerên wî/ê sist dibin û bi awayekî qismî bêhiş dikeve. Ev elamet nîşan didin ku rewşa nexweş giran bûye, xetereya jiyanî didome. Di vê rewşê de demildest divê serî li saziyên tenduristiyê bê dayîn.

Her weha xebatên hatine kirin, destnîşan dikin ku rêbaza verişandinê rêbazeke şaş e û ji ber vê rêbazê gelek nexweşan jiyana xwe ji dest dane.[971] Di demên dawî de gel di warê tenduristiyê de serwext bûye û saziyên tenduristiyê tercîh dike.

---

968 Jêder: 22, 30, 54, 87, 125, 126.
969 Jêder: 134.
970 Jêder: 11, 15, 24, 41, 66, 71, 92.
971 Vecdet Öz, Şükriye Karadayı, Hüseyin Çakan, Beytullah Karadayı, Ahsen Kaya, "Acil Tedavi Birimlerinde Gıda Zehirlenmeleri", *Marmara Medical Journal*, 2014; 27: 89-95.

# BEŞA ÇAREMÎN
## LI GORÎ OCAXAN BIJÎŞKIYA GELÊRÎ LI HERÊMA SEMSÛRÊ

### Ocax û Saziya Ocaxtiyê

Bêjeya ocaxê, gelek wateyan di nav xwe de dihebîne. Di Ferhenga Enstitûya Kurdî ya Stenbolê de gelek wateyên vê peyvê hene: Cihê ku bi mebesta şîv pijandinê, xwe germkirinê hwd. agir lê tê dadan; alava ku tiştên danîne ser germ dike, dipêjîne, dikelîne; cihê ku cewher jê tê derxistin, kan; warê ku gelek tişt lê hene (ocaxê komirê); warê mirovan; malbat, bavik û hwd. Her weha di bijîşkiya gelêrî de ocax, bi wateya malbata ku bi rêya destwergirtinê hin agahî, tecrûbe û rêbaz ji pêşiyên xwe sitendiye û bi hin rê, rêbaz û nistiyan pirsgirêk û nexweşiyan derman dike, tê bikaranîn û hwd.[972] Boratav, li ser sê wateyên civaknasiyê yên bêjeya "ocax"ê radiweste. Yek jê "ber" e. Mirov ji kê hatiye, bav û kalên wî/ê kî ne, ew e. Ya din navendên pîroz ên herêmî ku civakên Elewî-Qizilbaş bi wan ve girêdayîne. Wateya dawî, ew kesên ku xwediyê hêza dermankirina nexweşiyekê

972 Ferhenga Kurdî-Tirkî, Zana Farqînî (Amadekar), Weşanên Enstitûya Kurdî ya Stenbolê, Çapa 1., Stenbol 2004: r. 1171.

ango çend nexweşiyan in.[973] Di vê xebatê de em ê li ser çarçoveya wateya dawî ya ocax û ocaxtiyê rawestin û hêmaya "ocax"ê bi vê wateya dawî bi kar bînin.

Di nav çandên rojhilatî de çanda ocaxtiyê ji serdemên kevin dest pê kiriye û îro jî bi navên cihê li gelek welatan hebûna xwe didomîne. Berdewamiya ocaxan bi du awayan pêk tê. Yek jê berdewamiya nifşê malbatan e ku ew jî bi şopa lawikan tê meşandin. Ango malbata ku lawikên wan qet tunebin, bi destê keçikan nikare kevneşopiya ocaxê bidomîne. Lewra piştî ku keçik mir, ocax jî vedimire. Rêbaza din jî "destdan" û "destwergirtin" e. Endamê ocaxê, berî bimire heger her du alî jî bixwazin dikare destê xwe bide endamekî ne ji ocax û malbatê. Her endamê ocaxê nikare vê peywirê bidomîne. Divê endam, xwediyê hin taybetiyan bin:

- Ji bo ku ocax dewam bike divê kesên jîr ku her gav mîrata ocaxan-nistiyan hildin ser milê xwe.

- Divê, wê mîrata ocaxtiyê li gorî serdema ku tê de ne nûjen bike lê wekî ku tenê kevneşopiyê didomîne nîşan bide.

- Divê ew hiş, wêrekî, zîrekî û taqeta pêşxistin û domandina kevneşopiyê jî bi wan re hebe.

Tenê kesên xwediyê van taybetmendiyan vî barî dikarin hildin ser milê xwe. Her weha divê ew kesê/a ku nistiyê dike bandoreke wisa li ser kes û civakê bike ku nifşên nû jî baweriya xwe bi ocaxan bînin. Kesê/a ku nistiyê pêk tîne çiqas bi nav û deng be bandora wî/ê jî ewqas zêde dibe. Lewra divê hin çîrokên derbarê mucîzeyên nexweşên giran ku bi alîkariya wî/ê kesî/ê xwedî sêhr ji mirinê xelas bûye bêne belavkirin. Her weha divê tirs bikeve dilê kesên ku di mijara bawerîpêanîna bi van kesên "taybet" de bi guman tevdigerin. Ji bo vê yekê jî di mînakên bobelatên ku ji ber bawernekirinê hatine serê hin kesan, hin kesên ku tenê ji ber derba sêhrên wan kesan mirine wekî çîrok di nav civakê de werin belavkirin. Wekî ku tê xuyakirin bandoreke dualî heye. Çi bi tirsê be, çi bi mînakên baş be divê pergala bawerkirinê têkûz be.[974]

---

973 Pertev Naili Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*, r. 113.

974 Adem Koç, "Şifa Ocaklarında Kozmogoninin Kültürel Sürekliliği", *Millî*

## Çanda Ocaxan Li Herêma Semsûrê

Di bijîşkiya gelêrî ya Semsûrê de bi taybetî jî di nav civaka Elewiyan de ji bilî van wateyên li jor di wateya kesên ku berê wan digihêje malbata Hz. Elî û Hz. Fatma û her weha Hz. Mihemed jî tê bikaranîn. Lewra, her lawikê ku ji ocaxan zêde bibe, bi awayekî xwezayî berê Pêxember û malbata wî temsîl dike. Ji ber vê yekê jî kesên biocax, bi taybetî ocaxên dedeyan ne kesên ji rêzê ne. Li gorî baweriya gelê herêmê, *"Ew, xwediyê hin keramet û razan e; ew qencên Xwedê"* ne.[975]

Li gorî baweriya gelê herêmê, ocaxên Elewîtiyê yên Semsûrê ocaxa Axûçanê ango ji aliyê Xorasanê ve hatine. Li gorî hin çavkaniyan, Kurdên Elewî yên Semsûrê ji eşîrên Xinis û Çemîşgezekê ne ku di sedsala XVIan de ji aliyê Şahê Îranê Ebas ve ji bo parastina sînorê bakurê Îranê hatine mişextkirin. Piştî peyman Qesri Şîrînê careke din vegeriyane herêma Dêrsimê û ji wir belayî nav Anadolê bûne.[976] Ocaxê Ap Ezîzê, Ocaxê Îram (Îbrahîm) Dede, Ocaxê Gozel Dede û hwd. mînakên vê yekê ne.

Ocaxa Hizir Uryan îro jî, li bajaroka Bilamê ya li ser navçeya Cêlikan ya Semsûrê bi destê malbata Elî Dede (Buyukşahîn) hebûna xwe didomîne. Ev ocax, ji bilî peyrewên Elewîtiyê ji aliyê kesên ku zarokên wan qet tunene ango zarokên kurîn tunene ve tê ziyaretkirin.[977] Ocax ji bav û kalên wan ji wan re maye. Di vir de tiştê balkêş ew e ku kesê/a biocax destê xwe nade hemû endamên malbatê. Li gorî jêderan, endamên din ên malbatê jî dikarin nexweşiyan derman bikin lêbelê dermankirina wan bi qasî ya kesê/a ku dest ji mezinên xwe girtiye ne bi bandor e.[978] Hin nivîskar û lêkolîner kevneşopiya ocaxtiyê wekî berdewamiya çanda Şamanîzmê dibînin. Dîsa li gor van lêkolîneran Şamanîzm li gorî ol, çand, civak û rewşê xwe ji nû ve diafirîne.[979]

---

*Folklor*, 2016, 28 (109), r. 177.

975 Jêder: 78, 144, 155.

976 Doğan Kaplan, "Kürtler ve Alevilik", *Kürtler 2 (Toplum, Din)*, Nida Yayınları, 1. Baskı İstanbul 2015, r. 259-263.

977 Fevzi Rençber, "Adıyaman Yöresi Alevi Ocakları", OMÜİFD, On Dokuz Mayıs Üniversitesi İlahiyat Fakültesi Dergisi, 2013; 35: 166.

978 Jêder: 74, 123, 145, 146, 158.

979 Mircea Eliade, *Kutsal ve Din Dışı*, çev: Mehmet Ali Kılıçbay, Gece Kitapları,

## Rêbazên Ocaxîbûnê

Li Semsûrê, ji bilî ocaxên olî, mirov bi çend rêbazên din jî dikarin bibin ocax û her weha nistî û dermanên xwe bi kar bînin. Wekî kevneşopiyekê, ji bav û kalan, bi rêya xewnan, bi rêya destwergirtinê biocaxîbûn û hwd. hin ji wan rêbazan in. Li jêr bi kurtî dê behsa van rêbazan bê kirin.

## Ocaxîbûna bi rêya kevneşopiya destdan û destwergirtinê

Endamên van ocaxan ji bo ku bibin ocax nakevin nava tu hewldanan. Ew wisa bawer dikin ku ev ocax di demên kevin de bi awayekî -ku niha di vê mijarê de ne xwediyê tu agahiyan inketiye destê pêşiyên wan û heta îro bi rêya dest dan û destwergirtinê didome. *Ocaxê kuxika qêqî, ocaxê pîrozê, ocaxê bîrovê* û hwd. mînakên vê yekê ne. Di van ocaxan de, jin an mêr ferq nake. Her du zayend jî dikarin dest bigrin û dest bidin. Her weha dikarin destê xwe bidin kesên xerîb ku ne ji malbata wan in jî.[980]

Hin kes hene ku bi rêbaza destwergirtinê ocaxî bûne û ew jî dixwazin destê xwe bidin kesekî/e xerîb lê dilxwaz. Di vê rêbazê de kesê/a ku dixwaze destê xwe bide kesekî/e din, bi hin pêkanîn û rê û resmên wekî tifkirina dev, vexwartina ava ku kesê/a biocax tif kiriyê, pif kiriyê, li ser dia kiriye an jî mistdana piştê destê xwe dide kesekî/e din. Di vê pêkanînê de rê û resmek (rîtûel) weha derbas dibe. Kesê/a ku biocax e, berî ku ji taqetan bikeve li dora xwe dinihêre. Kesê/a ku karibe vî karî ji dil û bi berpirsyarî bike çavdêriya wî/ê dike. Piştre di demeke guncav ku kesekî/e din ne li bal wan e, gazî wî/ê dike. Li hember xwe dide rûniştandin û daxwaza xwe jê re vedibêje. Heger kesê/a li hember -piranî yek ji endamên malbatê ye- vê daxwaz û pêşniyarê erê bike ev jî destê xwe dixe nav destê kesê/a biocax.

Kesê/a biocax dibêje:

- *Min destê xwe da te, te jî qebûl kir?*

---

Ankara 1991.

980 Jêder: 63, 72, 75.

Kesê/a dilxwaz dibêje:

- *Erê, min qebûl kir.*

Ew yek sê caran dubare dibe. Piştî vê rê û resmê êdî ew kes jî dibe biocax. Carinan jî kesê/a biocax tif li devê kesê/a li hember xwe dike. Bi vî awayî ocax dest diguherîne.[981]

Li Muğlayê di dema destdan û destwergirtinê de her du alî destmêj digrin, tên bal hev. Sê caran sûreya Îxlasê û carekê jî sûreya Fatîhayê dixwînin. Kesê/a ku dest bide dibêje "destê min ji te re". Yê/a din jî destê wî/ê maçî dike. Bi vî awayî dest diguhere. Hin jî piştî van diayan tifî kefa destê xwe dikin û bi kesê/a ku dest wergire re didin zimankirin.[982]

### *Bi rêya ol û baweriyê*

Ew kesên ku bav û kalên wan dede, şêx, seyîd û hwd. pêşengên olî bûne îro wekî berdewamiya wê ocaxê li ser "post"ê bavê xwe rûdinin û nexweşînan bi rêbazên xwemalî derman dikin.[983]

Ev ocax tenê bi rêya zarokên lawîn didome. Endamên malbatê yên jin, heta ku sax bin dikarin bi nojdarî, derman, nistî û diayan nexweşiyan çareser bikin, lêbelê nikarin nifşê ocaxê bidomînin. Piştî kesê biocax mir, heger kur jê nemînin ew ocax jî vedimire. Lêbelê piranî gora wî wekî tirbe tê çêkirin û ji aliyê dilxwaz û hezkiriyên wan ve serdana wê tê kirin. Bi demê re gel ji bo heman nexweşiyan diçin serdana wê gorê, li wir dia dikin, loqmeyan didin û ji tirbeyê tika dikin da ku nexweşîna wan derbas bibe. Heger hebe ji ava wê ziyaretê vedixwin, serê xwe pê dişon. Heger av tunebe hinek ji axa wê dixwin, wekî teberik bi xwe re digerînin. Carinan jî perçeyekî piçûk ji paçikê kesk ê ser sandûqayê jê dikin û bi xwe re digerînin.[984]

---

981 Jêder: 101, 124, 128, 136, 138.

982 Sever Görgen Satır, *Muğla'da Halk Hekimliği*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Ankara Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Halk Bilimi Anabilim Dalı, Ankara 1994, r. 200.

983 Jêder: 3, 10, 18, 19, 41, 70.

984 Jêder: 88, 94, 125, 141.

### *Ocaxîbûn bi rêya piştî derbaskirina nexweşiyekê*

Hin kes hene ku nexweşiyeke giran û xedar derbas dikin. Di vê pêvajoya nexweşiyê de bi rêbaza ceribandinê hin giyayan dixwin, ava wan vedixwin, di canê xwe didin û hwd. Bi vî awayî xwe derman dikin. Piştî ku baş bûn, wê pêkanîn, derman û rêbaza ku li ser xwe ceribandine di dermankirina kesên din ku bi heman nexweşiyê ketine de jî diceribînin. Piştî çend ceribandinên din êdî dibin ocaxê wê nexweşiyê, êdî ew kes bi xwe dibin ocax û hekîmtiyê dikin.[985]

### *Ocaxîbûna piştî mirinê*

Li hin deveran, tê bawerkirin ku ax û ava li derdora gora kesê/a ji ber nexweşînekê miriye; fêkî, pel an jî qalikê darên li ber gorên wan şifa ne. Piştî mirina wî kesî, xizmên van kesan ên mayî dibin kesên biocax. Heger ew kes bi çi nexweşînê miribe êdî ji bo nojdariya wê nexweşînê diçin axa gora kesê/a tînin, di nav avê de dihelînin û didin nexweş. Carinan jî beşek ji darên ber kêla gora kesê mirî dibe derman. Bi vê pêkanînê tê bawerkirin ku xirabiyek ancax bi xirabiyeke din tê têkbirin ango dermanê nexweşînê ligel gora wî kesî ye ku bi wê nexweşiyê miriye.[986] Tiştê balkêş ew e ku îro di çêkirina parzayan da ji mîqroba nexweşiyan sûd tê wergirtin.

> "Berê li Hesenka wexta ku êk bi zerikê diket, digotin herin nav mêzel. Axê yekî ku bi zerikê miriye wûnin û bikin nav avê. Bira wê avê vexwe. Ew ê rehet biwe."[987]

Li gundê Hesenkan, kesên bûne şahidê vê pêkanînê, diyar kirine ku di demên dawî de kes baweriya xwe bi vê pêkanînê û bi pêkanînên bi vî rengî nayne.[988]

---

985 Jêder: 24, 116, 117, 119.

986 Jêder: 14, 15, 28, 36, 41, 60.

987 Jêder: 6.

988 Jêder: 14, 15, 87, 126, 131, 132, 133.

### *Ocaxîbûna bi rêya çavdêriyê*

Hin kesên ku demeke dirêj li bal kesên biocax dimînin û çavdêriya wan dikin. Piştî demekê ew jî hînî amadekirin û nojdariya dermanên Kurmancî dibin. Dermanên ku li gorî çavdêrî, tecrûbe û zanînên xwe amade kirine li ser kesên nexweş diceribînin. Piştî çend serkeftinan êdî nav û dengê wan li derdorê belav dibe. Êdî ew jî xwe wekî ocax dihesibînin. Lêbelê ev rêbaz ji bo her ocaxî bi kêr nayê. Bêtir di nexweşiyên ku bijîşkiyê dixwazin de bi kêr tê. Ew kes giya û têkberên din ên dermanên Kurmancî nas dikin. Hînî çêkirina dermanan û pêkanînan dibin. Piştî vê yekê ya dest dixwazin ya jî bêyî ku destûrê bixwazin bi xwe dermanan bi kar tînin. Bi demê re zarokên wan jî wekî kevneşopiyekê nojdariyê didomînin. Gel jî wan wekî ocax dipejirîne.[989]

### *Ocaxîbûna bi rêya xewnan*

Hin kes hene ku dibêjin, *"Min di xewna xwe de filan kes dît. Wî ji min re got, destê min ji destê te re. Ji niha û pê de vê nexweşiyê êdî tu derman bike."* Kesê/a ku xewn dîtiye ji wê rojê û şûnde li gorî xewna ku dîtiye tevdigere û dibe ocax.[990] Li Semsûrê, Berber Elî bi vî awayî bûye ocaxê mirîstanê.[991] Li gundê Narinceyê jêder Zîna Mehemed Elî, ku xesûya wê bi rêya xewnan bûye ocaxê bereketê, serpêhatiya xesûya xwe weha vedibêje:

> "Xasiya min a rahmetli ocaxê berketê bû. Tenê bizinik xa hewû lê mast û rûn û dew û toraq lê kêm nediwû. Ê me jî tim manga me hewû hema qatixî me bi me nadikir. Mi rokê lê ra got:
> Ti çir dikî ku saxbûna qatixî te tuneye?
> Go:
> Mi di xevnê xa da pîrevok dî. Mast û rûn li mi xast. Mi jî go, 'Tunnê'. Heqqet jî tunewû. Şîrê bizinikê dike li malikê re bê çi. Pîrevokê go, 'Were destî xa bide min ki berket têkeve qatixî te.' Ez ber vê çûm lê ez pir ditirsiyam. Ku mi destê xa pê kir ez veciniqiyam. Ez bi xa hesiyam ku va xevne. Hîngê vir da

989 Jêder: 23, 30, 40, 42.
990 Jêder: 13, 24, 29, 106.
991 Jêder: 80.

ku ez destî xa bavêm çi, berket dikevê.
Wê royê û şûnda min îna kir. Ku mi dew dikiya, min bang li xasiyê xa dikir. Destî xa bavita meşkê dêw, kêsê rûn bi ser diketin. Mi deh cara zêdetir tercîwe kiriye. Bi çavê serî xa dî ye."[992]

Taybetiya vê ocaxê ew e ku ocax derbasî nifşekî din ango kesekî din nabe. Bi mirina wî kesî re ew ocax jî dimire. Li hin herêmên Anadolê jî mînakên vê rêbazê hene.[993]

## Temen di Ocaxan de

Temenê kesên biocax li gorî ocaxan diguhere. Di ocaxên ku ji malbatê/berê tên û ocaxên olî ku berê wan digihêje malbata pêxemberê Îslamê Hz. Mihemed de temen ne girîng e. Li gor baweriyê her kesê/a ku endamê malbatê ye bi destê şifayê tê dinyayê. Lewra hebûna wan bi xwe dikare şifayê bide. Her weha di ocaxên ku wekî kevneşopiyekê ji bav û kalan tê û ji zarok û neviyan re dimîne de jî pirsgirêka temen tuneye. Ocaxên ku bi rêya *pifkirinê* û *tûkirinê* nojdariya kul û nexweşiyan dikin mînakên vê yekê ne.[994]

Ji aliyê din ve, hin ocax hene ku divê kesê/a ku nexweşan derman bike bigihêje temenekî û tecrûbeyekê. Jîr û jêhatî be, rê û rêzên civakê zanibe û teşxîs û çareserkirina pirsgirêkê zanibe. Ocaxa navketinê mînaka vê yekê ye. Kesê/a ku navê hildide divê bi anatomiya laşê mirov zanibe. Cihê ku navik lê ye nas bike û divê bizane bê ka navik çawa dikeve cih. Her weha ji sedemên navketinê agahdar be û ji bo xweparastina ji navketinê çi pêwîst e, divê bizane. Li gundê Hesenkan Z. H. pispor û ocaxê vê nexweşiyê ye.[995]

Kesê/a biocax, heta ku tendurist û temenê wî/ê derfetê bidê karê xwe didomîne. Hîmê ocaxê li ser dilxwaziyê ye. Helbet kengî bixwaze dikare bibêje *"êdî ez vî karî nakim"* lê nabêjin

992 Jêder: 140.
993 Sever, *Mersin ve Yakın Çevresi Halk İnançları ve Halk Hekimliği*, Ankara 2001.
994 Jêder: 10, 18, 21, 122, 127, 128, 140.
995 Jêder: 8, 9, 136.

lewra civak bi biocaxîbûnê re berpirsyariyeke mezin jî dide ser milê kesê/a biocax. Piştî ku kesê/a biocax pîr an nexweş bû û êdî nikaribe karê xwe bimeşîne wê gavê destê xwe dide kesekî/e din. Heger kesê/a biocax berî ku bimire destê xwe nede kesekî/e din, ew ocax vedimire.[996]

Hin ocax jî hene ku nexweşîna ku ew derman dikin ji holê radibe. Piştî vê yekê, ew ocax jî bi awayekî xwezayî vedimire. Ocaxê kula salê mînaka vê yekê ye.

## Zayend di Ocaxan de

Zayenda kesên biocax li gorî ocaxan û nexweşiyan diguhere. Hin ocax hene ku zayend ne girîng e; jin jî dibe mêr jî dibe. Lêbelê hin nexweşîn hene ku tenê jin derman û nistiyan li nexweşan dikin. Di nexweşînên dema zaroktiyê de piraniya ocaxan jin in. Ocaxa çilderxistinê, ocaxa ser û binê, ocaxa kuxika qêqî, ocaxa zerikê, ocaxa tirsvegirtinê û hwd. hemû jin in.[997]

Li gorî hin ocaxan wekî zayenda mirovan, zayenda kulan jî heye. Heger kul nêr be divê zilam tû nexweşînê bikin; heger kul mê be divê jin tû nexweşînê bikin. Di nojdariya kula pîrozê de hem mêr hem jî jin bi hev re tû kulê dikin.[998]

Carinan nexweş an ocax heger jin be naxwaze ku derkeve pêşiya mêran; heger mêr be naxwaze derkeve pêşiya jinan. Di rewşên weha de jin, jinan; mêr jî mêran derman dikin. Dema ku nakokî çêdibe, kesê/a biocax, tif li paçikekî dike û bi alîkariya endamekî malê ji zayenda din re dişîne.[999]

Heger kul di devereke fediyê ya mirovan de derketibe, derman û nojdarî çi be ferq nake, li gorî pêwîstiyê paçikekî paqij, şekirek, pariyek nan û hwd. jî wekî navgîn tê bikaranîn. Hemê Şukrî Mistî Usî Kekê (Hamza Ozdemîr) ku ocaxê pîrozê ye, di rewşên weha de paçikekî paqij an jî seriyek şekir bi kar tîne:

"Êk caran hen tên cem me, kul di dêv da hatiye. Jin e, de ez

996 Jêder: 5, 17, 117, 125, 126.
997 Jêder: 1, 2, 3, 8, 9, 12, 14, 16, 17, 18, 20.
998 Jêder: 17, 40, 55, 63, 75, 88, 90, 147.
999 Jêder: 85, 111, 113, 134, 164.

ê çito tû devê wê bikim? Desmalik temîz ya jî seriyek şekirî çayê tînin mi ra, ez tûyê dikim. Ez diwêm, 'dest li me derman li Xadê.' Paşê ez didim dest kurika. Ez diwêm, 'hûn jî tûyê bikin û bidinê.' Ew jî tûyê wî şekirî ya jî paçî dikin, paşê didin destî wan û wan bi rê dikin."[1000]

Li Enqere û Qonyayê jî di ocaxan de zayend ne pir girîng e lêbelê piranî heger nexweş jin be, jin derman dikin; nexweş mêr be, mêr derman dikin.[1001] Li Safranboluyê, heger hejmara kunîran zêde be kul mê tê hesibandin; heger kunîr yek be, zayenda wê nêr tê hesibandin. Li gorî wê an jin an jî mêr derman dikin.[1002]

## Rewşa Perwerdehiyê di Ocaxan de

Li gorî xebatên ku ji aliyê me ve hatine meşandin, têkiliya perwerdehiyê û ocaxan li gorî ocaxan diguhere. Wekî ku li jorê jî hatibû behskirin, di ocaxên mistdan, pifkirin û tûkirinê de asta perwerdehiyê ne girîng e. Lêbelê di ocaxên ku diayan dikin, nivîştan çêdikin, berbejnan çêdikin û li gorî hin ayet û kitêbên din dermanan çêdikin de asta perwerdehiyê girîng e. Di ocaxên weha de bi taybetî xwendin û nivîsandina Erebî girîng e. Lewra, nivîşt û berbejn bi Erebî têne nivîsandin. Dia, piranî bi Erebî têne xwendin. Hin şêx û mela ji pirtûkên berê yên bijîşkiya gelêrî -çi Erebî, çi Farisî, çi jî Tirkî dibin- ku bi tîpên Erebî hatine nivîsandin sûdê werdigrin.[1003]

Her weha di salên dawî de hin endamên ocaxan li ser têkiliya bijîşkiya gelêrî û tiba alernatif lêkolînan dikin û herduyan berawird dikin. Ew kesên weha girîngiyê didin xwendinê. Ji bilî vê yekê perwerdehî bêtir ji bo jiyana asayî, pêşxistina çandî û bidestxistina pîşeyeke baş tê kirin. Ev yek jî ji bo her kesekî/e ji

1000 Jêder: 6.

1001 Ayşe Duvarcı, "Halk Hekimliğinde Ocaklar", *Milli Folklor Dergisi*, 1990; 2, r. 36.

1002 Eyüp Akman, "Türk Halk Hekimliğinde Ocaklık Geleneği ve Safranbolu'daki Ocaklar", *Kastamonu Eğitim Dergisi*, Mart 2007; 15 (1): 393-400.

1003 Jêder: 3, 4, 8, 9, 19.

rêzê derbasdar e.[1004]

Digel ku tu têkiliyeke rasterast di navbera perwerdehî û ocaxan de nîne jî, li gorî lêkolînên ku hatine meşandin mirov dikare bigihêje hin encaman:

- Baweriya bi ocaxan roj bi roj kêmtir dibe lê venamire.

- Kesên ku ocaxan didomînin piraniya wan ne xwende ne ango hindik xwendine.

- Kesên ku serî li ocaxan didin piraniya wan ne xwende ne ango asta perwedehiya wan kêm e.

- Kesên ku serî li ocaxan didin ji aliyê baweriyê ve xwe "xurt" dihesibînin û baweriya xwe bi ocaxan tînin.

- Di nexweşînên xedar ku tiba nûjen çareseriyê nabîne ango nojdariya wan gelekî zehmet e de, asta perwerdehiyê ne girîng e; ji her astên perwerdehiyê mirov serî li rêbaz û pêkanînên ocaxan didin.[1005]

- Gelek kes hem ji ber bihabûna lêçûnên nexweşxane û hem jî ji ber bihayên dermanan -berî ku serî li nexweşxaneyan bidin- serî li ocaxan didin.[1006]

Hin kesên *"hişyar û xwende"* bi taybetî di çareseriya pirsgirêkên tenduristiyê de serî li rêbazên ocaxan û dermanên Kurmancî/Kurdewarî didin lewra, ew dixwazin ku xwe ji bandorên neyînî yên dermanên çêkirî (sentetîk) biparêzin. Hêjayî gotinê ye ku di nav wan kesan de bijîşk bi xwe jî hene.[1007]

## Pîşe di Ocaxan de

Li herêma Semsûrê, pîşeyên kesên biocax, li gorî rewşa wan ya aborî, asta xwendinê, herêma ku lê dijîn, zayend û hwd. diguhere. Di ocaxan de piraniya jinan di karekî fermî de naxebitin; kevaniya malê ne. Jinên ku li gund dijîn, heta ku ji kar ketine, ji bilî karê malê û gihandina zarokan bi kar û barên çandiniyê û sewalvaniyê ve jî mijûl dibin. Piştî ku ji ber pîrbûnê

1004 Jêder: 14, 20, 21, 37, 40, 65, 70.
1005 Jêder: 19, 34, 42, 50, 66, 67, 75, 90.
1006 Jêder: 35, 36, 56, 62, 63, 74, 93, 100.
1007 Jêder: 3, 7, 10, 37, 90, 118.

yan jî nexweşiyekê ji kar dikevin êdî li nav gund digerin an jî bi neviyên xwe re mijûl dibin. Li herêmê jî wekî çanda herêma Rojhilat kal û pîr, ji bilî daxwazên xwe yên taybet, piştî ku hemû zarokên xwe zewicandin, tevî lawê xwe yê herî piçûk dijîn. Ji ber vê yekê jî di warê aborî de berpirsyariyên wan kêm dibin. Ji aliyê din ve karê xwe yê ocaxtiyê heta ku destê xwe dane kesekî/e din didomînin. Di rewşên weha de, hin kesên ku bi saya ocaxtiyê debara xwe bi destmizan dikin jî hene.[1008]

Di nifşên ciwan de jinên biocax ku di karên fermî yên wekî mamostetî, hemşîretî, karkerî û hwd. dikin jî hene. Ev kesên "xwende" û "peywirdar" heta ku neçar nemînin peywir, berpirsyarî û pêwîstiyên ocaxîbûna xwe bi kar naynin. Lêbelê ew nayê wê wateyê ku ocax li ser wan radibe. Kengî bixwazin dikarin karê nojdariya xwe bikin; kevneşopiya ocaxîbûnê bidomînin.[1009]

Mêr, wekî kevneşopiyekê, ji bilî meşandina peywira ocaxîbûnê bi karekî ku debara xwe pê bikin re jî mijûl dibin. Lewra debara malê wekî kevneşopiya civakên pederşahî di bin berpirsyariya mêran de ye. Kesên ku li gund dijîn bi karê çandinî û firotina titûn di serî de bi her cure çandiniyê ve mijûl dibin. Li gorî herêmê kesên biocax yên ku şivantî û masîvaniyê dikin jî hene. Li bajaran, piraniya mêran bi bazirganî, esnafî û karkeriyê ve mijûl dibin. Hin ji wan mêran ji karên fermî malnişîn bûne.[1010] Porbir, necar, koşgar, titûnfiroş, fêkîfiroş, zêrger û entîkefîroş hin ji van pîşeyan in. Kesên biocax ku *"çûn û hatina"*[1011] wan pir in, dikaneke sembolîk vedikin û li wir dermanan çêdikin û nojdariyê pêk tînin. Hin jî li tenişta mala xwe odeyeke piçûk çêdikin. Mebest ew e ku endamên malbatê yên din bi van çûn û hatinan aciz nebin; karibin bi kar û barên xwe yên takekesî (şexsî) re mijûl bibin û jiyana xwe ya asayî bidomînin.[1012]

1008 Jêder: 2, 6, 11, 19, 78, 90.

1009 Jêder: 6, 19, 49, 50.

1010 Jêder: 65, 66, 67, 77, 83.

1011 Biwêj e. Wate, mêvanên wan pir in.

1012 Jêder: 11, 18, 82, 84, 87.

## Destmiz (Heqdest) û Diyarî di Ocaxan de

Dema ku kesek bi mebesta dîtina şifayê serî li ocaxekî dide destevala naçe mala wan. Li gorî kevneşopiya wî ocaxî tiştekî wekî diyarî bi xwe re dibe. Ew tişt di hin ocaxan de qalibek sabûn e; di hin ocaxan de pere ye. Lêbelê di gelek ocaxan de jî qet ferq nake. Tiştekî ji rêzê yê wekî sêvekê, seriyek şekir, mîqdarek pereyê hindik û hwd. jî dibe. Ji vê diyariyê re destmiz ango heqdest tê gotin. Di vir de tiştê girîng ew e ku nexweş destevala neçe. Lewra ji bo ku rê resma û pêkanîna dermankirinê bigihêje serî ew yek pêwîst e.

> "Niha, va destmiza nistiya xa ye; ku merî tişkî nedî, ew diya nê şûnê."[1013]

Jêder H.Ö. ku yek ji endamên ocaxa pîrozê ye, destmizê wekî nistiyekê dipejirîne. Yan na, kar û xisara mêvanan serê hevdu naşo. Ocaxîbûn û nojdariya nexweşiyan gelek caran li pêşiya meşandina jiyana wan ya asayî dibe kelem. Hemze Ö. hest û nêrînên xwe bi awayekî eşkere weha vedibêje:

> "Va tûkirina me ya pîrozê, boy rizay Xadê ye. Ne ki em dikin bi wan destmizan zengîn biwin. Nistiya xa va ye. Îna wike, xelî caran em di ber mêvanan ra nagîhinin ku nên pê re hazir kin. Em bera nagîhinin ku îşî xa yî malê bikinî. Lê dîsa jî xaş helal we, xêr e. Wekî din, kes bi destmiza zengîn newûye. Ew ê ku diwin dede û şêxên sexte ne."[1014]

Kesên biocax, vê *"huner"*[1015]a xwe wekî *"dana Xwedê"* dihesibînin û li gorî vê yekê tevdigerin. Lewma jî kesên ku tên ber deriyê wan bi paş de venagerînin. Divê *"dana Xwedê"* dîsa di rêya Xwedê de were xerckirin û bikaranîn. Divê kesê/a biocax, heta ku ji dest tê, qenciyan bike. Ev qencî wî/ê bextewar dikin, lewra kesê/a biocax wisa bawer dike ku bi vî awayî berpirsyariya xwe ya li hemberî Xwedê bi cih tîne. Ew dia, malavahî û spasiyên ku

1013 Jêder: 86.
1014 Jêder: 6.
1015 Behremendî, qabîliyet.

ji aliyên kesên ku şifayê digerin ve têne kirin wekî "destkeftî" û "xêra herî mezin" têne pejirandin.[1016] Destmiz çi dibe (hinek pere, seriyek şekir, destmalek, pêşgirek, qalibek sabûn û hwd.) qebûl e.[1017] Carinan destiyek giya ango lepek pincar jî wekî destmiz tê dayîn. Ayten A. ku ew jî endamê ocaxa pîrozê ye, di mijara nistî û destmizê de serhatiyeke xwe bi kurtî weha dibêje:

> "Carê, em ê li gund bûn, me dî ku jinik pîr hat. Go, ez sewê pîrozê hatime. Me tû paçekî temîz kir û dayê. Wê jî dêlvi destmizê va destiyek giya anîwû, avit ber golikê. Xadê qewûl bike, bes e; nistî ye."[1018]

Mêrên ku debara xwe bi destmizan dikin nînin. Çi jin dibin, çi mêr dibin ocaxa xwe *"ji bo Xwedê"*, *"Xêra xwe û miriyên xwe"* bi kar tînin.

Li hin herêmên Anadolê jî pêkanîn bi vî rengî ye. Li Osmaniyeyê, ji dêvla destmizê ve mîqdarek pereyê hindik an jî diyariyeke piçûk didin xwediyê ocaxan. Helbet ew pere têra debara malekê nake lê dîsa jî kesên biocax, ji ber bikaranîna karê xwe serbilind in.[1019] Li Kutahyayê, pereyekî hesinî yê wekî 50 quriş an 1 lireyî dixin destê ocaxan. Mebest ew e ku nexweşîna kesê/a nexweş negihêje xwediyê ocax. Wisa tê bawerkirin ku ew hesina nexweşînê di nava xwe de digre û bernade.[1020] Li Yozgatê, kesê/a ku li ocaxê tedawî dibe, bi feraseta, *"Heger tiştekî nedim ez ê şifayê nebînim."* tev digere û bi qasî ku jê qediyaye, hinekî pere dixe bin êkmerdî (mînder), balîv hwd. a kesê/a biocax. Yan jî şîr, hêk, mast hwd. bi xwe re dibe mala kesê/a biocax. Mîqdara pereyên ku wekî destmiz têne dayîn li gorî rewşa aborî ya nexweş diguhere.[1021]

---

1016 Jêder: 1, 6, 13, 18, 67, 68, 85, 128.

1017 Jêder: 12, 17, 67, 68, 69, 79, 81, 85, 111.

1018 Jêder: 31.

1019 Rezan Karakaş, *"Osmaniye Halk Hekimliğinde Ocaklar ve Bunlara Bağlı Uygulamalar"*, r. 325

1020 Baysan, *Kütahya ve Çevresinde Sağaltma Ocakları ve Yapılan Tedaviler*, r. 136.

1021 Uyar, *Halk Hekimliği Kapsamında Yozgat Ocakları*, 2013.

## Dem di Dermankirina Nexweşiyan de

Li herêma Semsûrê nexweşiyên têkilî ol û baweriyê, piranî êvara înê (roja pêncşemê êvarê) û roja îniyê têne dermankirin. Li gorî cure, giranbûn û xetereya nexweşiyê carekê an jî sê caran li ser hev pêkanîn tê dubarekirin. Nexweşiyên derûnî yên mîna dînbûn, cindarîbûn û bêhişketinê de sê êvarên îniyê yan jî sê rojên înê li ser hev diçin ber ziyaretan. Şevekê li wir radizên. Dia dikin û loqmeyan belav dikin.[1022] Heger wekî nistî, nivişt hatibe tercîhkirin dema wê ne bi sînor e. Kîjan roj nexweşîn diyar bûbe ango malbatê kengî biryara serdana kesên ku niviştan çêdikin dabe, ew roj dibe.[1023]

Di nexweşînên wekî kul û birînan de jî demeke diyar ya nojdarî û serdana ocaxan tuneye. Lêbelê piranî di saetên nîvro de mirov serî li ocaxan didin. Ya girîng ew e ku kesê/a biocax li mal be û guncav be. Lewra, nesax gelek caran diçin mala kesên biocax lê kesî li mal nabînin. Demeke dirêj li benda wan dimînin ango destevala vedigerin ma. Di demên weha de ji bo ku kesên biocax bibînin, berî ku biçin, bi telefonê li wan digerin ango ji kesên derdorê dipirsin bê ka kesê/a biocax li mal e yan ne li mal e. Li gorî rewşê tevdigerin.[1024]

Di van salên dawî de ji ber ku hin endamên ocaxan ku di kar û xebatên fermî de dixebitin, heger rojeke taybet nehatibe diyarkirin, roja şemî û yekşemê ango rojên betlaneyê dibin rojên nojdariya nexweşiyan. Hin ji wan kesan piştî peywira xwe ya fermî diçin "kargeh"a xwe û li wir şifayan belav dikin. Heger têkiliyeke baş di navbera nexweş û kesê/a biocax de hebe, dikare her gav serî li wan bide.[1025]

Di nexweşiyên demdirêj û xetere de kesên nexweş, ji bo ku zûtirkê (zûtirîn) bigihêjin tenduristiya xwe serî li çend rêbazan û ocaxan bi hev re didin.

1022 Jêder: 107, 108, 114, 124, 144.
1023 Jêder: 15, 18, 27, 65.
1024 Jêder: 88, 91, 92, 100, 127.
1025 Jêder: 31.

## Rewşa Nexweşên ku Serî li Ocaxan Didin

Berê ji ber bêderfetiyê, xizaniyê, kêmbûna bijîşk û nexweşxaneyan kêm zêde her kesî serî li ocaxan dida. Niha rewş hinekî guheriye. Di çend rewşên cihê de mirov serî li ocaxan didin. Mirov, piranî di rewşên îstisnaî de ku pêdivî bi nojdariyên tibî tuneye serî li ocaxan didin. Gava me taybetmediyên kesên serî li ocaxan didin li kesên biocax pirsî, çend xal derketin pêş:

- Kesên ku temenê wan hinekî zêde ye wekî hînbûyînekê berê xwe didin ocaxan.[1026]

- Kesên ku bi feraseta *"zirar ji ceribandinê nayê"* tev digerin serî li ocaxan didin.[1027]

- Kesên ku baweriyê bi bijîşkiya nûjen nayînin û ji êşa ku dê bikşînin ditirsin berê xwe didin ocaxan.[1028]

- Kesên ku ji aliyê aborî ve destteng in, berî biçin nexweşxaneyan wekî *"rêbazeke erzan ya nojdariyê"* serî li ocaxan didin.[1029]

- Kesên ku ji aliyê olî ve bawermendiyê ve xwe *"xurt"* dihesibînin berê xwe didin ocaxan. Bi taybetî jî şêx, mela û dedeyan.[1030]

- Kesên ku nojdariya ocaxan û nojdariya tiba hemdem didin ber hev, berawird dikin û dibêjin *"Ocax çêtir e"* serî li ocaxan didin.[1031]

- Kesên ku bi rêbaz û nojdariya tiba hemdem çareyekê ji nexweşîna xwe re nabînin, wekî *"çareya dawî"* serî li ocaxan didin.[1032]

## Rêbazên Dermankirina Nexweşiyan li Gorî Ocaxan

Di bijîşkiya gelêrî û ocaxan de rêbazên dermankirinê bi giştî dibe wekî destdan û mistdan; maçîkirin, pifkirin û tûkirin, nivişt û berbejn; xêzkirin û xwînkirin, dermanên riwekî, sewalî

1026 Jêder: 17,19.
1027 Jêder: 67, 68, 85.
1028 Jêder: 10, 54, 77, 110.
1029 Jêder:85, 97, 104, 114.
1030 Jêder: 4, 13, 16.
1031 Jêder: 12, 17, 67, 68, 69, 79, 81, 85, 111.
1032 Jêder: 18, 21, 78, 112, 119, 140, 161.

û madenî werin dabeşkirin. Di destdan û mistdanê hingavtin (temas) heye. Ji destwerdaneke bijîşkî bêtir bandoreke derûnî (psîkolojîk) li pêş e. Wisa tê bawerkirin ku kesê biocax e, hêza xwe ji Xwedê û ocaxa xwe sitendiye. Tenê ew dikare ji nexweşînê re çareseriyekê bibîne.

Li gorî baweriya gelê herêmê û nexweşan hin taybetiyên wan ocaxan hene:

- Ew kesên bi "raz" in. Bi gelek tiştên "veşarî" dizanin. Heger raza wan eşker bibe dê di cî de bimrin.

- Ew *"Qencên Xwedê"* ne. Xweda ji wan hez dike, lewma ew hêza nojdariya nexweşînan daye wan.

- Hêza wan ya şifayê û nojdariya nexweşînan heye.

- Ew, kesên ji ehlê sunnetê ne, paşxaneya bera wan digihêje şêx an jî dedeyên bi nav û deng.

- Hîn ku nexweşan derdê xwe negotine ew fêm dikin bê ka nexweş ji bo daxwazeke çawa hatiye.

- Ew tenê destê xwe di serê nexweş an milê nexweş didin û dia dikin.[1033]

Di rêbaza nivişt û berbejnan de jî bandora ol û baweriyê li pêş e. Kesên ku ji kul, nexweşîn û pirsgirêkên xwe yên din ên tenduristiyê re li çareyan digerin serî li şêx, mela, dede, alimên olî û hwd. didin. Ew jî li gorî pêdivî û nexweşiyan niviştan û berbejnan çêdikin.[1034]

Di rêbaza maçîkirin, tûkirin û pifkirinê de hingavtin ango destwerdaneke şênber heye. Lêbelê di bin hişmendiya nojdariya wê pifkirin, maçîkirin ango tûkirinê de "razek" heye. Ew raz, tenê di tifa kesên biocax de veşartî ye. Kulên wekî pîrozê û kula dêv bi vê rêbazê têne dermankirin. Carinan kesên biocax rasterast hingavtinê nakin. Ji dêvla wê tifî xurekekê ango şilavekê dikin û wekî teberikekê didin dest nexweşan. Nexweş, wê teberikê dixwin an jî vedixwin.[1035]

Di rêbaza xêzkirin û xwînkirinê de hingavtin û nojdariyeke

1033 Jêder: 25, 30, 37, 88, 95, 128.
1034 Jêder: 12, 13, 20, 25.
1035 Jêder: 6, 16, 97, 144, 145.

bijîşkî heye. Li gorî nexweşiyê pêkanîn jî diguhere. Xêzkirin, xwînkirin, daxkirin, qulkirin, şivkirin, tenîkirin û hwd. gelek rêbaz hene. Ocaxên zerikê, kuxika qêqî, bîrov, balûg û mirîstanê bi vê rêbazê nexweşînan çareser dikin. Di xêzkirinê de pozê derziyekê, pênûsekê, hebek ceh, cîlateke paqij an kêrekê bi kar tînin. Wek mînak, di nojdariya zerikê de kesê/a biocax, bi pozê cîlatekê ango kêrekê paş guhê nexweş hindikî xêz dikin heta ku xwîn jê hatiye. Piştre seriyek sîr spî dikin û di wê xwînê didin.[1036]

Di rêbaza pêkanînên riwekî, sewalî û madenî de dermankirin û bikaranîna dermanên Kurmancî/Kurdewarî heye. Li gorî nexweşînan, cureyek an çend cure nojdarî bi hev re têne bikaranîn. Ew têkber û riwek bi xavî, kelandî, pijandî, şewitandî, hûrkirî û hwd. têne bikaranîn. Carinan jî ava wan tê bikaranîn. Bi taybetî nojdariya derb, birîn, kul, werimîn, navçûyîn û hwd. bi vê rêbazê dibe.[1037]

Di nojdariya birîna balûgan de kesê/a biocax, çend heb balûg hebe ewqas hebên cehê yek bi yek dixe destê xwe û li dora balûgan digerîne. Dora wan xêz dike. Di bîrov û mirîstanê de kesê/a biocax, bi pênûseke bi hibr-boyax dora nexweşînê xêz dike û lê dixwîne. Di ocaxê ser û binê heyvê de bi teniya êzingekî, sersotekî li ser enî, rû, pişt û destên zarokan xaç tê çêkirin.[1038]

Li gorî ocaxan û herêman rêbazên nojdariyê û dermanên Kurmancî/Kurdewarî ku têne bikaranîn jî diguherin. Lêbelê di hemû rêbazan de pîvana hevpar bawerî ye. Li gorî pêwîstiyê carinan çend rêbaz bi hev re têne bikaranîn.[1039]

## Amadekariyên Berî Nojdariyê

Bi giştî tu amadekariya mezin ku berî serdana ocaxan û dermankirinê tê kirin nîne. Digel vê yekê çend amadekariyên piçûk

---

1036 Jêder: 109, 115, 126, 134, 139, 144.

1037 Jêder: 17, 30, 74, 90.

1038 Jêder: 94, 99, 148.

1039 Adem Öger, "Tarsus ve Çevresinde Sağaltma Ocakları ve Bunlara Bağlı Uygulamalar", *Turkish Studies International Periodical for The Languages, Literature And History of Turkish or Turkic*, 2010; 5 (1), r. 1233.

yên ku têne kirin weha ne:

- Ocaxê ku dê serî lê bê dayîn tê diyarkirin.

- Li gorî pirs û ceribandinan navê nexweşiyê tê diyarkirin. Heger ew nexweşî li wê ocaxê neyê dermankirin berê nexweş didin ocaxê pêwîst.[1040]

- Heger hebe alavên ku dê bêne birin ên wekî derzî, mirîşka reş, qalikê kûsiyan, ceh, qirşikê dirîreşkan û hwd. têne amadekirin.

- Li gorî ocaxan destmiza ku bê dayîn wekî hinek pere, qalibek sabûna xaşil, cotek gore, destiyek pelê cixareyê û hwd. tê amadekirin.

- Di hin nexweşiyên wekî navketinê de divê serê sibehê zû û bi zikê birçî serdana ocêx bê kirin.[1041]

## Qayîdeyên pêwîst ku divê nexweş di pêvajoya nojdariya nexweşiyê de bi cih bîne

Di vê mijarê de çend rêzikên giştî hene:

- Qayîdeya pêşî, bawerkirin e. Divê nexweş bawer bike ku dê ji ocax şifayê bibîne. Ew qayîde ji bo hemû nexweşînan derbasdar e. Kesê/a ku bawer neke nagihêje tu encamên erênî. Her weha çiqas zû serî li ocaxan were dayîn dê encama erênî jî ewqas zû bi dest bikeve.[1042]

- Qayîdeya duyemîn, dilpakiya kesê biocax û nexweş e. Divê herdu alî jî ji hev re dilpak bin; rast û durist bin. Heger yek ji wan bê dilê xwe vî karî bike, ew kar naçe serî.[1043]

- Qayîdeya sêyemîn, destmiz e. Mîqdara wê ne girîng e lê heta ku destmiz neyê dayîn pêvajoya dermankirinê naçe serî.[1044]

Di pêvajoya nojdariya gelek nexweşînan de kesên biocax, ji nexweşan re pêşniyara parêzê (perhîz-xweparastin) dikin. Parêz, li gorî nexweşînan diguhere:

1040 Jêder: 1, 2, 6, 10, 12, 19.
1041 Jêder: 14, 77, 79, 98, 114.
1042 Jêder: 84, 89, 124, 130.
1043 Jêder: 1, 25, 56, 70, 146.
1044 Jêder: 12, 15, 16, 28, 44, 48, 98, 150.

- Di pîrozê de, piştî nistiya tifîkirinê heta du sê rojan divê xwarinên giran û bi rûn ên wekî nîsk, hêk, goşt û hwd. divê neyên xwarin.

- Di sorikan de heta çend rojan serşûştin qedexe ye. Kesên nexweş, xwe ji sermayê diparêzin û parêzê digrin; xwarinên wekî hêk û nîskan nadin zarokan. Ji dêvila avê, şerbeta dims û tiştên şêrîn didin vexwartin.

Di ocaxa balûg, mirîstan û bîrovê de hin rîtûelên balkêş hene:

Di nojdariya balûgan de, hebên cehê, qirşikê dirîreşkan ango bizirê melkesan ku lê hatine xwendin divê ji aliyê kesê nesax ve bibin di devê sêrê çaterêyekê (sêrê-çarrê) de bixin binê erdê û heta ku veşartine jî li pişt xwe nenihêrin.

Di mirîstan û bîrovê de ew tayê ku lê hatiye xwendin divê bixin nav qelîşka dîwarekî.

Di ocaxê navketinê de gelek caran benîştê reş li ser paçikekî pahn dikin û li ser navikê dixin. Divê ew benîşt heta deh rojan li ser navikê bimîne û hwd. Mirov dikare van mînakan zêde bike.[1045]

## NEXWEŞIYÊN KU LI OCAXAN TÊNE DERMANKIRIN

Li Semsûrê jî wekî li herêmên din ên Tirkiyeyê gelek ocaxên ku nexweşiyan derman dikin hene. Nojdarî û pêkanînên ocaxan piranî bi rêya nistiyan pêk tên. Ew nistî carinan xêzkirina bi hebek ceh, bi pênûsekê, bi kêrekê û hwd. dibe. Carinan bi hinek ax dibe; nexweş axa bi "şifa" dixin nav avê û ava wê vedixwin. Car caran bi qurtek av jî dibe; çi ya bîrê dibe, çi ya kaniyê dibe çi jî ya çemekî pîroz dibe. Nivişt û berbejnên ku têne çêkirin jî dikevin nav van nistiyan; derbasbûna di bin serdera deriyekî ango derbasbûna ji dar û kevirekî qul jî dibe nistî. Li bajarê Qeyseriyê dema ku nexweşiya kuxikê mirov gelek aciz kiriye, çûne di qulika kevirekî ku li qûntarê Everekê (Erciyes) ye re derbas bûne û bi vî rengî hêvî kirine ku ji nexweşiya xwe xelas bibin. Ev kesên ku ta girtine di seqem û sermaya zivistanê de di kaniyeke ku dîsa li qûntarê Everekê ye du sê caran xwe bi ava sar

1045 Jêder: 11, 42, 64, 69, 90, 80.

şûştine û bi vî rengî hewl dane ku ji tayê (sitma) xelas bibin.[1046]

Di hin ocaxan de nexweşîn bi dermanan têne dermankirin. Ew derman ji çermê masiyên zer bigre heta bi maran û kevcalan; ji pelên daran heta bi her cure riwekan têne çêkirin. Ew yek li gorî cureyê nexweşiyê, serdem, kevneşopiya ocax û zanîna kesan diguhere.

Li Semsûrê, nexweşînên wekî guhrepik, kuxika qêqî, ser û bin, bîrov, mirîstan, balûg, kula salê, kunîr, pîroz, tirs û hwd. li ocaxan têne nojdarîkirin.

Li jêr ocaxên ku li Semsûrê hebûna xwe didomînin hatine rêzkirin û derbarê nexweşiyên ku li wir têne dermankirin de hin agahî hatine dayîn.

## Ocaxa Kuxika Qêqî

Kuxika qêqî, bi navê latînî pertussîs, ew nexweşiya ku ji ber cureyeke baqteriyan (bordotella pertusis) pêk tê, nexweşîneke vegir e û piranî zarokan de xuya dibe. Bi parzayê xetereyên wê ji holê radibin.[1047]

Nîşaneyên vê nexweşiyê wekî yên sermayê, bapêş û şewbê ne. Kuxik, xitimîn ango herikîna bêvilan, agirê hindik yê laş û pişkîn çêdibe. Bi pişkîn û kuxikê li derdorê belav dibe. Piştî ku gihaşte mirov û hefteyekî xwe nîşan dide. Ji ber vê yekê jî kuxika qêqî nexweşîneke fisek û vegir e, di demeke kin de di serî de endamên malbatê, hemû kesên li derdora nexweş dikarin bikevin nav lepê kuxika qêqî. Ev mîqrob di qirika mirovan de bi cih dibe û roj bi roj zêde dibe. Mirov dest bi kuxikê dikin. Her ku nexweşîn zêde dibe kuxik jî zêde dibe. Dayîn û sitendina bêhnê dijwartir dibe. Ji ber ku nexweş di dema hilmijînê de wekî dîkan deng derdixe ji nexweşînê re "kuxika qêqî" ango "kuxika "qîxik" dibêjin.[1048] Hingî tahdê li zarokan dike zarok dike ku bifetise. Lewma di zimanê Tirkî de wekî "boğmaca" tê pênasekirin.[1049]

1046 Boratav, *100 Soruda Türk Folkloru*, r. 124-125.
1047 Arzu İlçe, Hacer Alpteker, Esra Koçoğlu, *Bulaşıcı Hastalıklar*, r. 52.
1048 İlknur Aydın Avcı, *Enfeksiyon Hastalıkları*, r. 72.
1049 "Boğmaca Nedir?", https://www.acibadem.com.tr/ilgi-alani/bogmaca/#-

Nexweşîn bêtir zextê li zarokan û pîran dike. Heger tevdîrên wekî parzayê û nojdariya bi antîbiyotîkan neyên girtin bi taybetî zarokên ku temenê wan ji salekê piçûktir, zarokên şîrî bi xetereya mirinê re rû bi rû dimînin.[1050] Heger tevdîr û nojdariyên pêwîst neyên girtin pêvajoya nexweşînê ji serî heta binî nêzîkî du mehan diajo. Hefteya yekemîn tiştek ne xuya ye, hefteya duyemîn nîşanên nexweşînê xuya dikin. Panzdeh rojên duyemîn gelekî dijwar derbas dibin. Di vê demê de gelek zarok jiyana xwe ji dest didin.[1051] Piştre, heger nexweş nemiribe, kuxik hêdî hêdî kêm dibe û heta mehekê nesaxî ji holê radibe.

Li gorî hevpevînên ku hatine kirin, di demên berê de, di serî de zarok gelek kes bi vê nexweşînê mirine. Berê ji bo çareserkirina kuxika qêqî gel serî li hin pêkanînan dida: Yek ji vana derbaskirina zarokan a di dar ango kevirekî qul re bû. Car caran jî heft caran di dora wî kevirî re dizivirîn û heft caran jî di qulikê re derbas dibûn. Heger nexweş zarok ba û nikariba bi serê xwe vê pêkanînê pêk bîne, mezinan alîkarî dikir. Ew pêkanîn sê çarşeman li ser hev dihate dubarekirin. Wisa dihate bawerkirin ku piştî vê pêkanînê kuxika zarok dê kêm dibe ango ji holê radibe.[1052] Jêder Mahmut Ç.yê 88 salî zanînên xwe yên derbarê kuxika qêqî de weha vedibêje:

> "Li gundî me, Hesenka, li hemberî gund kevirkî kun heye. Wextê ku kurik bi kuxika qêqî diketin, sê çarşeman li ser hev ev kurika diwirin wê derê. Heft cara di kunê ra derbas dikirin heft cara jî di dor ra viz dikirin. Paşê tanîn mal. Ya xaş diwû, ya jî dimir."[1053]

Li hin deveran ev pêkanîn, di dema roj hilat ango berbangê de tê kirin. Li hin deveran jî xwîna mirîşkan di gewriya zarokan didin. Jêderên din jî di vê mijarê de serpêhatî û zanînên xwe weha vedibêjin:

---

genel-tanitim 15.01.2021.

1050 Jêder: 2, 14, 15, 16, 17, 27.

1051 Jêder: 3, 23, 59, 78.

1052 Jêder: 1, 24, 55.

1053 Jêder: 15.

"Yek li ser kêvir rûdinişt. Î di jî kurikê nexweş di kunê ra derbas dikir."[1054]

"Sewê kuxika qêqî, di çaxê rohelat ra ew kurika di kevirekî kun ra derbas dikin."[1055]

"Carinan jî xwîna mirîşkan di gewriyê didan."[1056]

Kesên ku ji kevir û daran sûdê wernagrin, serî li Ocaxê Kuxika Qêqî didin. Li navenda bajarê Semsûrê malbata Karadax ji aliyê bavê ve ocax in. Rêbaza wan ya çareserkirinê nistî ye. Tu dermanan bi kar nayînin. Îro jî kesên ku bi gumana kuxika qêqî serî li vî ocaxî didin hene. Lêbelê li gorî gotin û dîtina wan, ew kesên ku tên bal wan ne nexweşê kuxika qêqî ne.[1057] Ew nexweş in ku ji ber sermayê dikuxin. Nistiya ku ew bi kar tînin balkêş e:

Zarokê nexweş tevî nasekî/e xwe (dê, bav, bira û hwd.) tê mala wan. Nexweş derdixin derve, ber derî. Berê wî/ê didin qibleyê, li pêşiya wî/ê bizmarekî di erdê de dikutin. Kêrekê dixin destê xwe. Dibêjin, *"Bisimîlla"* û destê xwe didin ser çavê nexweş û bi pişta kêrê sê caran kêrê di ser qirika nexweş re dibin û tînin. Wekî ku serjê bikin dikin. Piştre kêrê datînin, dibêjin *"Here, bi ê Xwedê heta ku ew mêxa pasikî bûye tê jî xaş bibî."* Ev pêkanîn hemû li ser piyan çêdibe. Nasê/a ku bi nexweş re hatiye destmizekê dide kesê/a biocax û vedigere mala xwe.[1058]

Jêder Xatûn Y.ya 65 salî, di nojdariya kuxika qêqî de behsa bikaranîna şîrê kera reş, kuncî û runê nivîşkê dike û lê zêde dike ku gelek caran ev derman bi kêr nehatine û zarokan jiyana xwe ji dest dane:

"Di wexta me da tixtor tunewûn. Kî nexweş biketa dermanê Kurmanciyê lê dikirin. Carinan fayde dikir, xelî caran jî fayde nadikir. Sewê ku kurik li kuxikê qêqî bifilite "şîrê kera reş" bi kurika didan vexartin. Kuncî û rûnê nivîşkî tev li hev dikirin

1054 Jêder: 23
1055 Jêder: 36.
1056 Jêder: 76.
1057 Jêder: 2, 17.
1058 Jêder: 9, 11, 15.

û didan kurika. Lê ê pirê fayde nadikir; kurik dimirin."[1059]

Li gundên deştê yên Semsûrê, zarokên ku bi kuxika qêqî ketine ji bo ku şifayê bibînin dibin ber ziyareta "Çiplêx". Ev ziyaret li gundê Selemûtê ye. Zarokê nexweş roja înê[1060] dibin ber ziyaretê. Li hewşa ziyaretê kevirekî bilind û qul heye. Zarokê nexweş sê caran di nav wî kevirî re derbas dikin. Wisa bawer dikin dê zarokê/a nexweş ji kuxikê xelas bibe.[1061]

Wekî ku di van mînakan de jî xuya dibe baweriyên batil û baweriya bi Xwedê di hin pêkanînan de tevlihev dibin. Di çareserkirina vê nexweşînê de digel nojdariya bi dermanan, xurek û riwekan (kuncî, nivişk, dims, şîrê kera reş û hwd.) pêkanînên batil jî zêde ne. Her weha tiştê balkêş ew e ku berê jî şîrê keran wekî derman hatiye bikaranîn. Îro ji lêkolînên ku li ser şîrê keran hatine kirin tê fêmkirin ku şîrê keran ji aliyê naverok û sûdeweriyê ve nêzîkî şîrê dayikê ye.[1062]

## Ocaxa Kula Binerd/Qîlbaşi

Gelek navên vê nexweşiyê hene, wekî kula binerd, mûmar, qîlbaşî û dongizbaşî.[1063] Ev kul li pêçiyan û binçengan hatiye dîtin. Li herêma Semsûrê her sê navên li jor jî têne bikaranîn. Li herêma Semsûrê navê herî berbelav qîlbaşi ye. Li gorî agahiyên

1059 Jêder: 35.

1060 Hêjayî gotinê ye ku heman pêkanîn li gundê Hesenkan (Yassıkaya) roja çarşemê dibe. Digel ku her du gund nêzîkî hev in du rojên cuda "pîroz" têne hesibandin. Ew yek jî şopa baweriyên Êzdiyatiyê û baweriyên berî Îslamê tîne bîra mirovan.

1061 Nuran Çetin, "Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi", r. 27.

1062 Şebnem Budak Öztükoğlu, Asuman Gürsel, "Alternatif Bir Süt: Eşek Sütü", The Journal of FOOD, 2012; 37 (4): 243-250.

1063 Ev navê dawî wek navekî Tirkî tê guhê mirov. Lewra, li herêma Dûzîçî ya Osmaniyeyê jî bi navê "domuzbaşi" nexweşînek heye. Ev nexweşî piranî ji nav porê zarokan dertê. Por diweşîne, wekî pizrikên bi kêm (iltîhap) e. Wekî derman hestiyê berazan (xenzîr, dongiz) dişewitînin û ariya wan diavêjin ser kûlên bikêm. "Qîlbaşi" navekî hevedudanî ye; ji "qîl"a Kurdî û "başi"ya Tirkî pêk hatiye. Ew jî çanda hevpar ya gelê herêmê destnîşan dike.

jêderan ev kul niha ji nav civakê de rabûye; naye dîtin. Lêbelê berê gelekî zêde bûye. Ev kula, ji ber mîqrob û nexweşiya nav xwîna mirovan li laşê mirovan dertê.[1064] Kula binerd, piranî li çeqê tiliya mirovan û ji ber xwîna ku jehrî bûye dertê:

> "Qîlbaşi li pêçiya min hat. Jinikê sawûna xaşil rêş kir, derman lê kir. Xaş bû."[1065]

Li gorî daneyên jêderan, devê kula binerd hişk e, hindik jî derizî ye. Li her deverê mirov dikare derê. Piranî li nav çeqa pêçiyan dertê. Ji bo dermankirina vê kulê serî li ocaxan didin. Hin jî serî li hekîmên Kurmanciyê didin. Piranî derzî, şûjin ango li gorî mezinbûna kulê singê dolaban li ser agir germ dikin. Piştre, berî ku sar bibe di birîne re dikin û wê kêma di nav birînê de heta ku xwîna sor û paqij jê hatiye diguvêşin, vala dikin.[1066] Li gundê Hesenkan Gulê Ç. (m. 1987), ocaxê vê nexweşiyê bûye. Hamza Ö. ku şahidiya dermankirina vê nexweşiyê kiriye, di vê mijarê de weha dibêje:

> "Dongizbaşi, Met Gula (Gulê Ç.) rahmetli dibirî. Ew kula ê bin va ye. Şîş di êr da sor dikir û di birînê ra dikir. Aha xûnê tê diavêt. Di du sê royan de xaş diwû. Şopa wê jî nadima. Wextê ku derziyê sor dike, mîqrobê xa dimire."[1067]

Ji bilî derkirina bi sing û derziyê ya kula binerd (qîlbaşi), hin rêbazên din ên nojdariya vê kulê jî hene. Yek ji wan, bikaranîna dermanê ji pelên kizwanê ye. Hekîm berî ku biweşin pelên kizwanê berhev dikin da ku zivistanê jî karibin wan pelan bi kar bînin. Ji bilî zivistanê, di demsalên din de (bi taybeyî jî biharê) pelên kizwanê yên ter berhev dikin, di beroşekê de dikelînin. Hin hekîm hinek şekirê pola jî tevlê dikin. Heta ku wekî melhemê bûye dikelînin. Piştre wî dermanî li ser paçikekî paqij pahn dikin û hinekî sar dikin. Piştî sarkirinê didin ser kulê û dipêçin. Li gorî pêdiviyê du-sê caran vê pêkanînê dubare dikin. Dema

1064 Jêder: 43, 45, 88.
1065 Jêder: 161.
1066 Jêder: 28, 72, 90.
1067 Jêder: 6.

ku birîn nerm bû û qaşilê wê tenik bû, wê bi pozê derziyeke paqij der dikin:

> "Sewê qîlbaşiyê, çiloyê qizwanê dikişînin ser. Dikelînin, mist didin, didin ser. Benîştê qizwanê û şekir pola -î mîna lîmon tuzu ye, lê şêrîn e- tev dikelînin. Ku hestî lê bikeve, xaş dike."[1068]

- Hin kes jî dermanê vê nexweşiyê li malê amade dikin. Dims û arvan (ar-ard) tevî çenikek xwê di nav hev de dikelînîn, dikin pilor. Wê pilorê hinekî sar dikin û li ser paçikekî radixin. Piştre wî paçikî li pêçiya ku kula binerd lê hatiye dipêçin. Heta sibehê li ser dimîne. Li gorî baweriyê gelek kul bi şêraniyê derman dibin.[1069]

- Li hin deveran, hinek bamyeyê ter dikelînin, wekî pilorê dikin û didin ser.[1070]

- Li Komîrê mala Ş. H. ocaxa kula binerd (qîlbaşi) in. Sitiriyên kûçikan (cureyekî sitriyan e, li erdê pahn dibe, payîzê hişk dibe) li çolê berhev dikin û tînin dikelînin. Ava wan diparzînin, dikelînin heta ku wekî melhemê bûye. Piştre wê melhemê li ser paçikekî pahn dikin û didin ser kulê.[1071] Jêderek ku kula binerd li pêçiya wê hatiye, serhatiya xwe weha vedibêje:

> "Bi diriyê kûçika, ê nav zeviya bûn. Bi wan derman dikirin. Çeqê pêçiya gi mîna devî çeqê hêjîra vediwûn. Mîna qonax, qonax mîna dendikê tûya li ser destê meriya didan der. Li Komîrê, malê Ş.H. ocax in. Em çûnî cem. Go, herin wî dirî bikin (diriyê kûçika), wûnin bikelînin, temîz dakin (yanê biparzînin), hînga caki din bidin ser êr, bikelînin. Ê mîna melemê biwe. Du sê caran bidin ser. Heta ku kul der bûye. Me hung kir, di dehik ruyan de wenda bûn."[1072]

Kesên ku bi van dermanan ji kula binerd (qîlbaşi) xelas nabin, serî li ziyaretan didin. Li herêma Semsûrê Ziyareta Têm-

---

1068 Jêder: 23.
1069 Jêder; 7, 19, 20.
1070 Jêder: 12, 13, 24, 40.
1071 Jêder: 28, 72, 90.
1072 Jêder: 27.

rûz û ya Hecî Ûsiv ji bo vê mebestê jî têne ziyaretkirin. Kesê/a nexweş dibin ber wan ziyaretan. Heger derfet hebe, şevekê li wir dimînin. Wê şevê dia dikin, loqme dikin û belav dikin. Piştî vê serdanê heger nexwaş baş bibe, vê carê jî "wek spasiyekê" tevî nas û dostan diçin ber ziyaretê. Loqme çêdikin û dixwin, belav dikin.[1073] Li herêma Osmaniyeyê, ji bo dermankirina kula binerd hestiyê berazan dişewitînin û ariya wan bera ser kulê didin.[1074]

## Ocaxa Mirîstanê

Mirîstan, nexweşîneke çerm e ku wekî enflamatûarê tê pejirandin, diyardeyeke morfolojîk (hîstopatolojîk û klînîk) e.[1075] Peqika ku li ser çerm çêdibe, nerihetiyeke çermî ye û wekî xur û gewraxîbûnê tê pênasekirin. Dest û serçav jî di nav de li her devera laş dikare peyda bibe.[1076]

Mirîstan, li ser laşê mirov bi qasî 4-5 santîman û wekî gilowereke spî-gewr xuya dibe. Şewata wê kêm e lêbelê hinekî dixure. Ji bo çareserkirina mirîstanê nexweş, serî li ocaxan didin. Endamên ocaxa mirîstanê bi ceh, genim, xwê û rijiyê wê mirîstanê dibirin.[1077]

Li gundê Narinceyê yê li ser Semsûrê, jêder S. Ç. ocaxê mirîstanê ye. Wê jî destê ocaxê ji diya xwe sitendiye. Dema ku mirîstanê dibire, berê dora mirîstanê bi pênûseke rengîn xêz dike. Piştre bi hebek ceh çend caran dora mirîstanê xêz dike û lê dixwîne. Piştre tayekî dirûnê (dezi) li heba cehê dişidîne, dibêje:

> "Vê hewê cê bere di qelîşkê dîwarekî ke. Heta du-sê roya jî şûnê ku mi çîz kiriye meşo. Bi ê Xadê ew ê rehet biwe."[1078]

Ew heba cehê ku bi wê dora mirîstanê hatiye xêzkirin di

---

1073 Jêder: 63, 64, 78.

1074 Kurum, *"Düziçi'nde Halk Hekimliği"*, r. 18.

1075 Elif Atıcı, "Geçmişten Günümüze Egzama Tedavisi", *Türkiye Klinikleri Tıp Etiği-Hukuku-Tarihi Dergisi*, 2003, 11: r. 48-55.

1076 Jêder: 117, 128.

1077 Jêder: 1, 2, 6, 8, 10.

1078 Jêder: 131.

qelîşka dîwarekî de tê veşartin. Devera ku mirîstan lêhatiye heta du-sê rojan nayê şilkirin ango şûştin.

Bêyî destmiz nistî bi cih nabe. Xwediyê ocaxê -ê ku nojdarî kiriye tiştekî (pere, sabûn, qumaş, xwarin û hwd.) wekî destmiz distîne û nexweş dişîne malê. Di hundirê du-sê rojan de ew mirîstan jê diçe. Şopa wê wenda dibe.[1079]

Ji bilî birîna mirîstanê, li gundên girêdayî navçeyên Cêlikan û Sincikê kesên ku mirîstan li laşê wan xuya dibe diçin, dikevin avgermê. Rojekê du rojan li wir dimînin. Ji ava "îçmeyê" (avşor, avgerm, soda) vedixwin. Wisa tê bawerkirin ku avgerm mirîstanê paqij dike.[1080]

Li gundên Kolikê jî ocaxên mirîstanê hene. Li gundê Kefergeyê ocaxa mirîstanê, ji kesên ku dê û bavê xwe nedîtibin ango wek sêwî mezin bûbûn pêk tê. Jin û mêr tev de mirîstanê dibirin. Kesên biocax, li mirîstanê dixwînin. Piştre li benekî ango tayekî jî dixwînin. Wî tayî didin kesê/a nexweş û dibêjin, *"Vî tayî bere li derekê veşêre ya jî bike binî erdê. Bi ya Xwedê, ê kula te xaş biwe."* Hin jî diçin ber Ziyareta Guvîjê.[1081]

> "Mirîstan dixure, av dide. Jin jî dibirin, mêr jî dibirin. Ê ku bavê xa nedîwin, benekî dikin destê î nexwaş; xaş diwin. Li cem me jî ziyaret hewûn, diçûn ber Dara Gûvîjê."[1082]

Kesên ku bi vê nistiyê ji mirîstanê xelas bûne şahidiya vî ocaxî û vê jinê dikin gelek in. Li gorî wan kesan jî dermanê bingehîn/asas bawerî ye.[1083] Pêkanînên ji bo mirîstanê li herêmên din jî hene. Wek mînak, li herêma Qonyayê ji bo mirîstanê, gihayê gezgezkê bi kar tînin. Hinek gezgezk di nav avê de dikelînin. Piştre bi wê ava gezgezkê cihê ku mirîstan lê hatiye dişon, mist didin.[1084] Li Yozgatê jî ocaxên mirîstanê hene. Kesê/a biocax, diayên Felaq û Nasê dixwîne. Tifî mirîstanê dike. Piştre cihê ku

1079 Jêder: 9, 24, 28, 75, 128.
1080 Jêder: 93, 102, 113, 115, 116, 117, 120.
1081 Jêder: 3, 11.
1082 Jêder: 3.
1083 Jêder: 2, 3, 10, 11, 12, 19.
1084 Çevik, *Konya'da Halk Hekimliği Uygulamalarının Dünü ve Bugünü*, r. 70.

mirîstan lê hatiye berê bi ava germ mist dide û dişo. Piştre bi sîrkeyê dişo. Herî dawî jî hinek sîrke, av û hineyê li hev dixe û li mirîstanê dide.[1085]

## Ocaxa Çilderxistinê

Çilderxistin, wekî pêkanîneke serdema zaroktiyê jî tê zanîn. Ji ber vê yekê li jorê behsa vê mijarê hatibû kirin. Piştî ku zarok çêbû û pê ve, ji bo parastina zarok û dayikê ya ji pîra xêwê (çilvêketinê) gelek tevdîr têne sitendin. Heta çil rojî dayik û zarok ji malê dernakevin. Li gorî baweriyê neyarê pêşî pîra xêw û cin in. Ew jî ji hesin ditirsin. Ji bo ku teyr zarokan nebin lodek sitirî dixin devê rojînê. Lewra li gorî baweriyê teyr ji rojînê re tê hundir û li dayikê dixe, piştre jî radihêje zarokê çilinî û bi xwe re dibe. Derbarê zarok û jina çilînî de gelek bawerî û pêkanîn hene. Hin ji wan ev in:

- Sivnikekê datînin odeya ku jina çilînî lê dimîne.
- Jina çilinî, heta çil rojî ji malê nayê derxistin.
- Dema ku jina çilinî radizê derzî, meqes, şûjin û hwd. tiştekî hesinî datînin bin balîva wê.
- Ji bo ku jina çilinî di tariyê de nemîne û netirse lampe/çire heta sibehê vêketî dimîne.
- Piştî ku zarok çêbû dest û lingê wî/ê tê hine kirin.
- Pariyek nan û amûreke hesinî datînin ber serê zarok ango bin dergûşa zarok.[1086]

> "Kurikê ku nû çêbûye hene dikirin, xwê dikirin."[1087]
> "Nênik, pariyek nan ya meqesê didin bin sêri. Sewê cin û pêriya. Cin li hêsin ditirsin."[1088]

- Ji bo ku çilê jin û zarokên çilinî tevlihev nebe, nahêlin ku her du jin werin bal hev an jî li hevdu biqelibin. Heger digel hemû tevdîran zarok ango dayik bi çil bikeve wê gavê dayik zarok tev

1085 Uyar, *Halk Hekimliği Kapsamında Yozgat Ocakları*, r. 52.
1086 Jêder: 1, 7, 13, 20, 70.
1087 Jêder: 8.
1088 Jêder: 75.

de diçin mala "ocaxa çêl" û li wir ji aliyî endamên malbata çil ve serê zarok bi "tasa çêl" tê şûştin. Ev, taseke taybet e. Berê ji daran bû. Niha li dewsa tasa darinî "Tasa Hecê" tê bikaranîn. Li ser wê tasê hin nivîsên Erebî hene. Malbat dibêje ku ew nivîs ji ayetên Qurանê ne. Li herêma Semsûrê, ocaxa çil ya bi nav û deng li gundê li ser navendê, Qozan e. Hîn jî malbat wekî kevneşopiyekê vî ocaxî diajo. Her sal kesên ku serî li vê malbatê didin kêm dibin lê hîn jî hin kes zarokên xwe dibin wê malikê û çilê zarokê xwe derdixin. Her weha keça wê malbatê ku jê re "Zêw Qozanî" dibêjin, ku niha li gundê Malê Ber Dû yê nêzîkî bajarokê Komîrê dijî dest ji diya xwe sitendiye û piştî mirina diya xwe vî ocaxî didomîne.[1089] Li gorî hevpeyvînên ku me kirî, hin nîşanên zarokê ku çilpêketî weha ne:

Zarok ji xwarinê û taqetê dikevin, ronahî di çavên zarokan de namîne û her wekî xewa wan tê. Bêhna xirab ji zarokan tê. Bi gotina herêma Semsûrê, *"bîhn dikeve hestiyê kurika."* Zarok jar û qels dibin. Agir bi canê wan dikeve.[1090]

Têkiliya çilvêketinê û hejmara çilî heye. Li herêma Semsatê di dema çilderxistinê de çil kevirî berhev dikin, wan keviran dixin nava ava ku serê zarok pê bişon. Di dema serşûştinê de bêjingekê di ser zarok re li hewa digrin wê ava çil, tevî çil kevirî di ser serê zarokan de dirijînin. Piştre wê ava gemarî ku ku pê serê zarok hatiye şûştin di ser pez re, dîsa bi tasa çil, direşînin. Li gorî baweriya gelê li herêmê çilê pêz jî heye. Piştî vê serşûştinê, hinek *nan* û *xwê*[1091] di canê zarokan didan.

---

1089 Jêder: 5, 21, 69.

1090 Jêder: 1, 3, 12, 14, 29.

1091 Nan û xwê du îdyomên girîng in di çanda Kurdan de. Çend tiştan temsîl dikin. Yek ji wan dewlemendî ye. Kesên ku xwediyê *"nan û xwê"* be birçî namînin. Ya din, xwê û nan nîşana dilsoziyê ye. Kesê/a ku *"nan û xwêya yekî bixwe"* ango bi yekî/ê re demekê derbas bike û têkiliyeke deyne divê heta mirinê wê hevaltiyê ji bîr neke. Di vê mijarê de dema ku kesek demeke dirêj li rewşa nasekî/e xwe ango hevalekî/e xwe nepirse dibêjin, "Filankes "nanxwêsiz" (bêxêr) derket. Heger piştî demeke dirêj her du kes li devereke bi tesadufî li hev rast bên, yê ku gazinan dike dibêje, *"Tu çi nanxwêsiz derketî malxirawo, te nego va hevalê min/meriyê min mir, ma."* Xwê? Bi serê xwe xwarin/madeneke girîng e. Berê li ser kanên xwê gelek şer û pevçûn derketine di navbera dest-

Jêder O. K.yê bi nasnavê "Gênc Osman" û hevsera wî derbarê çilvêketinê de pêkanînên li herêma Semsatê weha dibêjin:

> "Me bang li ocaxê çêl dikir. Jinik dihat. Me çel kevir top dikir, dikir avê. Bi wê avê serî zariya dişûştin. Bêjing di ser zarî ra digirtin, ew ava, peva keviran, di ser zarî da dirijandin. Ki şûştin pêva hewk xwê û nan di canî wan didan. Sewê ki bîhnê xaş lê were. Paşê, ew ava çêl diwirin bi tasê çêl di ser pêz ra direşandin. Digotin, çelê pêz jî heye."[1092]

Li gorî baweriyên gelê li herêma Semsûrê "çel" ango çil rojên pêşî yê zarok û dayikê gelekî girîng e. Jiyana zarok û dayikê her gav di nav xetereyê de ye. Ji bo vê yekê jî divê hemû endamên malbatê hişyar bin. Çilê her tiştî heye û guman heye ku çilê yekî ji wan bi çilê zarok û dayikê re li hev bikeve.[1093]

Li hin deverên Semsûrê, jinên biocax, du caran çilê zarokan derdixin. Roja bîstan û roja çilî. Piştî derxistina çilê pêşî zarok û diya xwe dikarin ji mal derkevin. Di dema çilderxistinê de leganekê yan jî teştekê tînin û zarok tazî dikin û di nav wê leganê/teştê de didin rûniştadin. Jina biocax ku dike çil derxe, destên xwe vedike her deh tiliyên xwe nîşan dide, piştre destên xwe di ser hev re çeprast derbas dike; dide ser hev. Sê caran li ser hev li tasê dixwîne, weha dibêje û ava di tasê de li serê zarok dike:

> "A deh, a bîst, a si, a çel.
> Çelê mişk û maran,
> Ê cin û cinawiran,
> Ê giya çû, ê te jî çû."[1094]

Di çilderxistina roja çilî de jî heman rê û resm dubare dibe. Li gorî baweriyê, piştî derxistina çilê çilinî (çilê duyemîn-roja

---

hilatiyan de. Xwê ji xeynî xwarinê di gelek qadan de tê bikaranîn. Yek ji wan qada tenduristiyê ye: Ji bo ku bêhna xwêdanê ji canê zarokan neyê, çawa ku ji diya xwe çêdibin wan bi xwê paqij dikin. Dema ku devereke mirovan birîn dibe, ji bo ku birînan bikewînin xwê dixin devê birînê. Dema ku devê û diranê zarok û mezinan kul dibe, sûravka xwê di devê xwe werdidin.

1092 Jêder: 21, 42.

1093 Jêder: 21, 42, 66, 73.

1094 Jêder: 1.

çilî) êdî xetereya mirina zarok û dayikê ji holê radibe. Jiyana xwe ya asayî dikarin bidomînin. Jineke ku zarokê/a wê bi çil ketiye, serpêhatiya xwe weha vedibêje:

> "Ozlema me di dest me da nexaş bû; kir ki bimre. Hestî çavan daket; zayif bû, bû mîna pêçiyê min. Gotin, *'Diwe ku çel vêketiwe, berin bira çelî wê derxin.'* Pirs û pirs, me bir cem Zêw Qozaniyê. Di tasê da xand û av bi ser Ozlemê da kir. Em hatinî mal. Ew ava me reşand ser xêni, dor xêni, ser qundaxê Ozlemê, ser dergûşê wê jî. A wê û şûnda hen bi hen Ozlema me xaş bû."[1095]

Wisa tê bawerkirin ku piştî çilderxistinê hemû nexweşî û xerabî ji zarok û dayikê dûr dikevin. Êdî kesek û tiştek nikare zirarê bide zarok û diya wî. Zarok li dijî nexweşiyan bi hêz dibin, ji bandora rih û efsûnên xerab derdikevin. Li Bêsniyê piştî ku çilê zarok derket cara pêşî wî dibin maleke xwende, maleke dewlemend ango mala kal û pîrên zarok. Ew kesên ku zarokê xwe dibin maleke xwende, hêvî û bawer dikin ku zarokê wan jî di rojên pêş de dê bibe kesekî xwende. Malbatên ku zarokê xwe dibin maleke dewlemend, wisa bawer dikin ku zarokê wan jî di pêşerojê dê bibe kesekî dewlemend. Ew kesên ku zarokê xwe dibin bal merivên xwe jî wisa bawer dikin ku zarokê wan jî dê ji meriv û malbata xwe hez bike.[1096]

## Ocaxa Xofê û Tirsvegirtinê

Tirs bi xwe rewşeke xwezayî ye. Bi taybetî zarok, bi giştî mirov car caran ditirsin. Sedemên tirsê gelek in: Carinan mirov ji nişka ve li sewalekî ku bi saw û xof e rast tên. Wekî gur, kûçik, mar û hwd. Car caran dibin şahidê qezayeke trafîkê yan erdhejekê. Car caran jî li çolê yan jî li malê di tariyê de bi tena serê xwe dimînin, tevgerekê, dengekî yan amûrekê dişibînin

1095 Jêder: 164.

1096 Emine Dilek Dağlaraşar, *Besni Halk Kültürü Araştırması*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Çukurova Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı, Adana 2002, r. 11.

tiştekî bi saw û ditirsin. Mirov dikare van mînakan zêde bike. Di rewşên weha de mirov jî di bin bandora wê tirsê de dimînin. Digel ku rewşeke derûnî ye jî bandoreke girîng li ser jiyana mirovan dike. Biwêjên wekî "ziravê wî qetiya", "deziyê dilê wî qetiya","qudumê wî şikestin", "çokên wî sist bûn" û "gûnê wî zer bû, reng lê nema" û hwd. bandora tirsê ya li ser mirovan destnîşan dikin. Mirov jî ji bo ku bandora tirsê kêm bikin an jî ji holê rakin serî li hin pêkanînan didin. Pêkanîna herî berbelav vexwarina avê ye.[1097]

Li herêma Semsûrê ji bo rakirina bandora tirsê ocax hene. Ji bo pêkanîna jiholêrakirina tirsê têhega "tirsvegirtin"ê tê bikaranîn. Endamên van ocaxan -ku piraniya wan jin in- tirsê vedigrin. Di dema tirsvegirtinê de kesê/a tirsiyayî li hemberî kesa ku tirsê vedigre rûdine. Kesa biocax şarpe, bervang ango desmaleke reş dike destê xwe. Bi herdu guçkên (goşe-quncik) destmalê yên dirêj digre, du sê caran wekî baweşanê li ser rûyê kesê/a tirsiyayî li ba dike. Dibêje:

"Bismîllahîrehmanîrehîm,
Tirsê, tirsê!
Tirs hat te!
Tirsê, tirsê!
Tirs hat te!

Tirsê, tirsê!
Tirs hat te!
Tirs çû derva,
Filan kes[1098] hat bi ser va."[1099]

Piştre, bi guçkê destmalê digre, dide ser enîşka xwe û heta serê pêçiyên xwe dipîve. Piştre çiqas li ber bimîne, cara duyemîn ji wir dest bi pîvanê dike. Piştî ku ev pêkanîn sê caran dubare kir, çiqas destmal li ber bimîne lê dinihêre û li gorî dirêjahiya destmalê dibêje *"Tu hevqas tirsiya ye lê niva metirse, tirsa te çû."*

1097 Jêder: 1, 8, 9, 11, 19, 24, 33, 35, 44, 70, 81.
1098 Di vir de navê kesê/a tirsiyaye tê gotin.
1099 Jêder: 12.

Heger tirsa mirov reviyabe destmal dirêj namîne. Heger dirêj bimîne ew tê wê wateyê ku tirs hîn li ser mirov e. Divê careke din tirs were vegirtin. Kesê/a ku tirsiyaye bi xwe yan yek ji mezinên wî/ê destmizekê didin jina biocax û vedigerin mala xwe.[1100]

## Ocaxa Xoşrîgê

Nexweşîneke çermî ye. Peqikên sor li ser çerm çêdibin û dixure. Piranî di serî de, li ser rû û di nav şeqan de û hin caran jî li her devera laş derdikeve. Wekî pizrikeke mezin e, serê wê reş e. Ji bin ve kêm digre. Dema ku kêm digre, bêhneke gelekî xirab jê tê. Cihê ku kul jê tê por diweşe. Piştî kul baş dibe jî dewsa wê kulê gurrî dimîne.[1101] Berê, ji bo nojdariya vê kulê, mîza zarokan û ariya kulekan li hev xistine û sibehê-êvarê tê dane.

> "Du pacê û mîza kurika tê didin. Kul bû, serê wê ê reş bû. Bîhn diket serê kurikan."[1102]

Li gundên rojavayê Semsûrê, ji bo çareserkirina kula xoşrîgê serî li ocaxan didin. Qalibek sabûna xaşil ango neşixulandî/nû dibin mala ocêx. Malbata ocêx wê kulê dibire.

> "Xoşrîgê jî dibirin. Ji bin va avlîsk dide, mîz dide. Qalok sawûn î xaşil diwin malê ocêx, ew dibirin."[1103]

Hin kesên hekîm ji bo çareserkirina kula xoşrîgê dermanên Kurmancî/Kurdewarî çêdikin. Ev derman ji şewitandina hebên cehê, kakilê gûzan, toza goztaşi (bakir sulfat) pêk tên. Berê goztaşî dihêrin; hinek ceh li ser sêlê dişewitînin, paşê dihêrin; hinek kakilên gûzan jî li ser sêlê dişewitînin, dikutin. Piştre hemû têkberan tevlihev dikin û bi baskê mirîşk an jî dîkan di kulan didin. Jêder Qudret K. ku xwe wekî ocax nahesibîne, bi qasî zanîna xwe kula xoşrîgê terîf dike û rêbaza ku ji bo der-

1100 Jêder: 2, 5, 6, 73, 74, 81, 95, 96, 114.

1101 "Kurdeşen Nedir?", https://www.memorial.com.tr/saglik-rehberleri/urtiker-kurdesen-nedir/ (27.01.2019).

1102 Jêder: 16.

1103 Jêder: 18.

mankirina kula xoşrîgê (kurdeşen) bi kar aniye weha vedibêje:

> "Xoşrîg, siftê sorik dibe, ê pirrê li serçavan û batiyan (nav şeqan) tê. Dixure, av dide, dişewite. Me goztaşi dihêra, ceh dişewitand, diparziya, kakilê gûza jî dişewitand. Ew jî dihêra mîna tozê dikir. Paşê, me gi li hev dêxistin. Mîna mêst diwû. Me bi perê mirîşkan di kulê dida."[1104]
> "Jina sewê ku porê wan pêt biwe, nerm biwe û baş were şûştin li şuna şampuan û sawûnê gil dişixulandin. Gil, bihatekî axa gewr e. Nexaşiya xoşrîgê şunda serê kesê nexweş jî bi gilê dihat şûştin. Ew axa li bajaran dihat firotin.[1105]

Jinan ji bo ku porê wan xurt bibe, nerm bibe û baş were şûştin li dêvila şampuan û sabûnê gil bi kar dianîn. Gil cureyekî axa gewr e. Piştî nexweşîna xoşrîgê serê kesê/a nexweş jî bi gilê dihate şûştin. Ew axa li bajaran dihate firotin. Niha gel, ji bo nojdariya xoşrîgê serî li navendên tenduristiyê dide.[1106]

## Kula Ocêx

Ev kula di dev, binguh, binçeng di serî de li her devera laşê mirov dikare derbikeve. Taybetiya vê kulê ew e ku demeke dirêj diajo û kêmeke bibêhn ji devê birînê tê. Dor devê mirovan û hundirê devê mirovan kul dibe, zer dibe. Ji bo nojdariya vê kulê jî ocax hene. Endamên ocaxê, wek nojdarî, tif (tû) li devê mirovan dikin. Piştre wekî parêzê dibêjin, divê tiştê birûn û goşt nexwin. Mala vî ocaxî li navenda Semsûrê li hinda Tewixanê (Taxa Xoca Omer) ye. Roja îniyê divê mirov here mala ocêx.[1107]

Li hin deveran ji vê kulê re "kula xulêm" jî tê gotin. Li Semsûrê, Xatîce D. ocaxa vê nexweşiyê ye, ew vê kulê derman dike. Li gorî gotinên wê, divê nexweş nava hefteyê her roj were mala ocêx. Ji bo carekê divê mirîşk û dîkekî bi xwe re bîne. Ev dîk û mirîşk li mala ocêx werin serjêkirin. Goştê wan ji mala ocêx re

1104 Jêder: 23.
1105 Jêder: 15.
1106 Jêder: 8, 10, 19, 23, 64.
1107 Jêder: 1, 4, 144, 152, 154.

bê hiştin. Jina biocax, xwîna wan dîk û mirîşkan di gihayekî dide. Ew gihayê bi xwîn tevî hinek gihayên din hûr dike û wekî tozekê diavêje ser kulê. Di vê navberê de fatîhayekê û sê îxlasan jî dixwîne.[1108] Divê nexweş heta ku kul baş bûye ango heta çil rojî goşt nexwe. Wisa tê bawerkirin ku piştî çil rojî dê ew kul baş bibe.

> "Ez kula ocêx jî nas dikim, bîhn li kulê tê. Ê mîna bîhnê mîriyan e. Hema em nizanin derman bikinî. Ocaxî wan î cihê ye. Wê kulê tûyê nakin, lê dixûnin. Tozik giha jî heye, (e nizanim çi bihat e) wê direşînin ser kulê."[1109]

Li gundê Hemzeyînê (Yelkovan) yê li ser Kolikê, Z.S. jî ocaxê kula ocêx e. Ew li kulê dixwîne. Li gorî gotina wê, ev ocaxa ji Ziyareta Çinêr[1110] tê. Ziyareta Çinêr li gundê Bevdolê yê li ser navçeya Kolikê ye. Li dora wê ziyaretê kaniyek heye. Kesên ku serî li wê ziyaretê didin ji aliyê nobedarê wê ziyaretê ve têne dermankirin.[1111]

### Ocaxa Pîrozê

Navê vê nexweşînê bi tibî çi ye em nizanin. Bi qasî ku agahiyên jêderan hatiye fêmkirin pîroz kuleke hişk e, wekî gûzekê mezin dibe. Li gorî texmîna me, pîroz bêtir ji ber enfeksiyona (mîqrob) laşê mirovan dertê. Taybetiya pîrozê ew e ku pir bi şewat e. Kul her jan dide. Wisa dibe ku êdî nexweş nikare ji ber êşê bisekine. Carinan ji ber diranekî riziyayî, carinan ji ber sitiriyekî ango hişkederbekê pîroz dertê. Kul li bin çerm dertê. Av nade. Pîroza ku li tilî/pêçiyan dertê serê tilî/pêçiyê reş dike. Heger neyê derman kirin, xwîna mirov jehrî dike û heta mirinê jî dibe.[1112]

Li herêma Semsûrê ji bo dermankirina kula pîrozê serî li ocaxa pîrozê didin. Ew ocax gelek in. Ji her sê çar gundan li

---

1108 Nuran Çetin, *Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi*, r. 31.

1109 Jêder: 6.

1110 Ev ziyaret li dora gora Mola Omerê Nûranî hatiye çêkirin. Ji ber ku dareke çinarê yê mezin li ber ziyaretê heye bi navê "Ziyareta Çinêr" jî tê nasîn.

1111 Jêder: 112.

1112 Jêder: 6, 15,129, 140.

gundekî malbatek biocax heye. Li gorî gotina endamên ocaxa pîrozê, ve nexweşî xwedî zayend e. Pîroza nêr jî heye û ya mê jî heye. Heger pîroz nêr be divê keseke jin tifî kulê bike. Heger pîroz mê be, divê zilam tifî kulê bike.[1113]

> "Em ocax in. Ocaxê me di Mala Mistê da tê. Kalê kalî me jî tû pîrozê kiriye. Diwe ku pîroz ê mê we jî, nêr we jî. Loma him mêr him jî jin tûyê dikin."[1114]

Nistiya pîroz ê tifkirin e û parêz e. Kesê/a ku pîroz lê hatiye divê serî li ocaxa pîrozê bide. Ji endamên ocaxê pîrozê jinek û mêrek tifî kulê dikin û dibêjin *"Dest li me, derman li Xwedê."* Piştî tifkirinê pêşniyara parêzê li kesê/a nexweş dikin. Dibêjin ku, *'Tiştê bi rûn û no*[1115] *mexwe; nîskan mexwe, hêkan mexwe, rûn mexwe, goşt mexwe. Şêraniyê, dims, bastêq û hwd. dikarî bixwî. Zirara nan tuneye.'* Di demeke kin de dê kula pîrozê nerm bibe û biteqe.[1116] Jêdereke ku kula pîrozê li devê wî hatiye, serpêhatiya xwe weha vedibêje:

> "Êvarkê şewatik ket bin vî didanî minî paşin û berneda. Heta siweda ez li ber şewatê ranemedîm. Ez siweda rawûm ku mîna gûzikê gir bûye û ê mîna kêvir hişk e. Mi hewik axri kesîcî xwar fayde nekir. Gotin, 'Diwe ku pîroz we, here gundî Hesenka, mala Mistî Ûsî Kekê, bira tûyêkin.' Mi îna nekir lê çare tinewû. Neyse, ez çûm mala wan. Gotin, 'pîroz e'. Tûyê kirin. Mi destmiza wan da û ez vegeriyam. Hîn ez nuh gêhiştiwûm mal, mi dî ku devê mi şor bû. Mi tû kir ku mêratê kula der bûye, heta nîv saetê min tu dikir. Bi ser wê da ew şewata gi bû deriw. Hîngê vir da mi ew şewata nediye."[1117]

Taybetiyeke vê nexweşiyê jî ev e ku divê mirov derziyê nêzîkî kulê neke. Heger derzî pê bibe dê êş zêdetir bibe.[1118]

---

1113 Jêder: 6, 21, 129.
1114 Jêder: 6.
1115 No: Peyveke xweser ya herêma Semsûrê ye. Di wateya hemû tiştên "zêde" (ne asayî) tê bikaranîn. Mînak: Îsota tûj devê meriv dişewitîne lê bandora wê zû wenda dibe, lê îsota no heta êvarê devê meriv dişewitîne.
1116 Jêder: 103, 104.
1117 Jêder: 133.
1118 Jêder: 1, 6, 7, 12, 20.

Hin kes hene ku ji ber sedemên cihê nikarin herin mala ocaxê pîrozê. Di rewşên weha de li gorî devera ku kula pîrozê lê hatiye, paçikekî paqij ango seriyek şekir dişînin mala biocax. Endamên ocaxê, tifî wî paçikî ango şekirî dikin. Piştre wî şekirî dixin devê xwe ango wî paçikî didin ser kula pîrozê. Ew jî dibe derman. Lêbelê ji bo ku nistî were cih divê destmizê bidin û parêzê jî bigrin. Wekî destmiz pere jî dibe; sêvek, xwarinek jî dibe. Mîqdar û biha ne girîng e, lêbelê divê tiştek were dayîn.[1119]

## Ocaxa Zerikê

Di nav gel de, çend cureyên zerikê têne zanîn: Zerika zaroktiyê, zerika tirsê û zerika reş. Derman û nojdariya zerika dema zaroktiyê û ya zerika tirsê li ocaxan dibe lê zerika reş li ocaxan derman nabe.[1120]

Zerika dema zaroktiyê, ji çavên zarokan xuya dibe. Piştî ku zarok çêbû, çavê zarokan zer dibin. Dermanê wê şîrê dayikê ye. Her ku dayikê zarok mêjand, zerik jî bi awayekî xwezayî wenda dibe. Heger pêvajo hinekî dirêj bibe, laşê zarokan, heta mîza zarokan jî zer dibe. Hîngê serî li hin nistiyan û pêkanînên bijîşkiya gelêrî didin:

- Ji bo zerika zaroktiyê, paş nermikî guh bi cîlatê hinekî xwîn dikin. Sîrê û xwê dikutin di devê wê birînê didin da ku birîn bikewe.[1121]
- Hin kes jî sîrê didin bin balîva ber serê zarokan.[1122]
- Li gundê Qinixê û derdora bajarokê Komîrê, ji bo ku zerika zarokan derbas bibe mîza zarokan bi wan didin vexwartin. Vê pêkanînê çend rojan li pey hev serê sibehê bi xwirînî dubare dikin. Her carê bi qasî kevçiyekî çayê ango yê şîvê (li gorî temenê nexweş) didin vexwartin.[1123]

1119 Jêder: 1, 5, 24, 25, 26, 78, 80, 106, 120, 122.
1120 Jêder: 1, 2, 4, 8, 9, 19, 20.
1121 Jêder: 1.
1122 Jêder: 3, 25, 99.
1123 Jêder: 60, 142.

"Sipçîkê çavan zer diwe, mîz zer diwe. Mîza xa vedixwarin, du-sê royan serê siwê, bi xwîrînî bi ser va dikirin. Bi kevçiyê şîvê ya jî ê çayê vedixarin. Min bixa jî vexariye. Ez carkê jî çûm mala Elifa Jina Îsmalî Alî Gulê. Wê heniya mi bi cîlatê birî."[1124]

- Ji bo zerikê li gundên nêzîkê Semsûrê ji kevjalan jî sûdê werdigrin. Li gorî baweriyê û tecrûbeya gelê li herêmê, di nav laşê kevjalan de deverek heye ku aveke zer jê tê. Heger wê ava zer tevî hinek şîrê dayikê li hev bixin û bidin zarokan dê zarok ji zerikê xelas bibin. Jêder Ayşe B. ev rêbaza nojdariyê ji Gula Ûsî Elê ku bi qasî 40 salî ji wê mezintir bûye, hîn bûye.[1125]

- Kitaneke zer diavêjin ser dergûşa zarok ango ser çavên zarok û heta ku zerik derbas bûye li ber lampeyeke zer dihêlin.[1126]

Li her deverê Tirkiyeyê li dijî zerika zaroktiyê pêkanînên bijîşkiya gelêrî têne bikaranîn. Zerik, piranî ji aliyê ocaxan ve tê dermankirin. Ji jêkirina hin deverên laşê zarokan ya bi cîlatê, kêrê ango gûzanê û niqutandina çend dilopên xwînê re "birîna zerikê" tê gotin. Pirî caran paş guhê zarokan tê birîn. Kêm caran jî serê poz, arsaqa dev, navbera tiliyan, nermikê guh û navbera her du biriyan tê birîn. Kitaneke zer diavêjin ser dergûşa zarok ango ser çavên zarok. Li Orduyê, zarok bi paçikekî zer girêdidin.[1127] Li Trabzonê, zêrekî zer bi cil û bergê zarok ve girêdidin, kincên zer li wan dikin û bi ava giyayê zerikê serê zarokan dişon.[1128] Li Dîlokê (Eyntaw) poşiya zer ya bi navê "Ahmediye" diavêjin ser zarokan.[1129]

---

1124 Jêder: 161.

1125 Jêder: 133.

1126 Jêder: 5, 6, 7, 14, 16, 25, 49, 50, 67, 70, 145, 160, 161, 162.

1127 Nurgül, Bölükbaş, Nülüfer Erbil, Hanife Altunbaş, Zehra Arslan. "0–12 Aylık Bebeği Olan Annelerin Çocuk Bakımında Başvurdukları Geleneksel Uygulamalar", *Uluslararası İnsan Bilimleri Dergisi*, 2009; 6 (1), r. 164-176.

1128 İlknur Kahriman, *Trabzon İl Merkezinde 6-12 Aylık Çocuğu Olan Annelerin Bebek Bakımına İlişkin Geleneksel Uygulamaları*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Karadeniz Teknik Üniversitesi Sağlık Bilimleri Enstitüsü Halk Sağlığı Anabilim Dalı, Trabzon 2007, r. 29.

1129 Ökkeş Çetin, *Gaziantep İli Oğuzeli İlçesi Halk İnançları*, (Yayımlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Niğde Üniversitesi Eğitim Bilimleri Enstitüsü İlköğretim

## Ocaxa Bîrovê (Sedef)

Bîrov, nexweşîneke çermî ye. Li gelek deverên laşê mirov çêdibe. Cihê ku bîrov lê hatiye spî dibe, qaşilk digre û dixure. Di sedsala XVIIIan de, mela û zanayê Kurd Melayê Erwasî, ji bo başkirina vê nexweşînê bizirê xerdelê, sîrke, ariya hestiyê dewaran wekî dermanê bîrovê pêşniyar dike:

> "Eger tuxmê xerdelê bikutin hindek sîrke têkil bikin li ser bîrovê danin, pak dibit. Hestiyê pişt û sîngê dewaran bişewtînin li ser bîrovê dani, pak dibit..."[1130]

Li herêma Semsûrê, mirov ji bo başbûna bîrovê serî li ocaxan didin. Kesê/a biocax pêşî li birînê dinêre û paşê teşxîsê datîne. Heger nexweşîn bîrov be, dora wê xêz dike, li ser dixwîne û nexweş dişîne malê. Piştî çend rojan bi xwe derbas dibe.[1131]

## Ocaxa Balûgê (Belalûg)

Balûg, cureyek ji nexweşiyên çermî ye û vegir e. Piranî di dema zaroktiyê û ciwantiyê de xuya dibe. Ji ber ava qirêj ya golgenî, çem, daşir û hwd. balûg çêdibin. Li dest û lingan zêdetir xuya dibin. Lêbelê li deverên zayendî jî carinan xuya dibin.[1132] Li ser çermê mirovan bi qasî nîskekê heta nokekê bi dehan kul dertên. Çermê destan hişk dibe. Gelek cureyên wan hene. Piraniya wan bê êş in. Lê yên ku diêşin jî hene. Ji aliyê dîtbariyê ve gelekî kirêt in. Bi demê re hêdî hêdî wenda dibin.[1133]

Di dema zaroktiyê gelek zarok ji ber van balûgan bêzar dibin û naxwazin derkevin nav hevalên xwe. Lewra hevalên wan henekên xwe bi zarokên xwedî balûg dikin. Îro ji aliyê tiba nûjen ve çareseriya vê nexweşiyê heye. Lê di nav gel de hîn jî pêkanînên

---

Ana Bilim Dalı Sosyal Bilgiler Öğretimi Bilim Dalı, Niğde 2017, r. 70.

1130 Yıldırım, *Ji Sedsala 18. Pirtûkeke Kurdî Ya Bijîşkiya Gelêrî Tiba Melayê Erwasî*, r. 25.

1131 Jêder: 71, 88, 120, 131.

1132 "Siğil nedir, Nasıl Tedavi Edilir?", https://www.medicalpark.com.tr/sigil-nedir-neden-olur-sigil-nasil-tedavi-edilir/hg-1945 (20.11.2018).

1133 Jêder: 1, 2, 6, 7, 64, 67.

bijîşkiya gelerî têne bikaranîn:

Li herêma Semsûrê, rêbaza herî berbelav serîlêdana ocaxan e. Li gelek gundan ocaxên balûgê hene. Berî ku serî li ocaxan bidin li malê jî hin nistiyan bi cih tînin. Yek ji wana bi ta û darikê dirîreşikê çêdibe. Darikekî dirîreşikê jêdikin. Tayekî jî tînin. Balûgan dijmêrin û ji bo her balûgekê girêkekê li ta dixin. Piştre wî tayî bi darikê dirîreşikê ve girêdidin. Wî darikî dibin li serê çaterêyekê de dixin binê erdê. Li gorî baweriyê heta ku ew ta birize dê ew balûg jî winda bibin.[1134]

> "Sewê balûga, me direşik girêdida û dikir serî çateriya. Me dihêmcart, çend balûg hebûna me wiqas girêk li dêzi dixistin, paşê me ew deziya bi direşikê va girêdida. Ew guliyê direşikê jî diwir devî çateriyekê da dikir binî erdê. Heta ku ew deziya diriziya, balûg jî wenda diwûn."[1135]

Li gundê Huzurînê, ji bo balûgan, şîrê kerikên hêjîran bi kar tînin. Rojê du caran şîrê hêjîran di balûgan didin. Heta ku wenda bibin.[1136]

Li gundê Çarkeziyê pêkanîneke din heye. Fatereşka sewalekî tînin; hûr dikin û dipijînin. Çiqas balûg hebin bi ewqas sitirî yek bi yek di tîkegoştên wê fatereşkê de diçikînin û dixwin. Piştre wan sitiriyan didin hev û di devê çaterêyekê de diçikînin.

> "Sewê balûgan? Me dirî di pîreşikê (dalak) da dikir û dixwar. Çiqas balûg hewin bi wiqas diriyan pîreşikê dixwin. Paşê, wan diriyan diwin dikin devî çatiriyekê. Heta ki diri riziye, balûg jî wenda diwin."[1137]

Li Qinixê, ji bo her balûgekê nokeke hişk dixin avê. Roja din wan nokan dibin deverekê û dixin bin axê.

> "Ê min jî yekî got. Go: "Bêmcêre, ku çend balûg hewin wiqas nok, bike nav avê. Paşê wan nokan bere devî çatiriyekê bike bin axê. Min hunga kir, gi lê çûn."

---

1134 Jêder: 1, 8, 68.
1135 Jêder: 8.
1136 Jêder: 68.
1137 Jêder: 22.

Li gundê Xosmosiyê, Mala Niwê ocaxa balûgan e. Ew, nistiyeke din bi kar tînin: Li balûgan dixwînin, ji bo her balûgê nokekê dijmêrin. Piştre wan nokan bi dizika berî nava şîva kesê/a ku balûg li destan hatine dikin. Jêderek serpêhatiya xwe ya balûgan weha dibêje:

> "Sewê balûgê em hatin Mala Niwê, Xosmosiyê. Lê xandin. Çiqas balûg hewin, wiqas noka dêmcêrin. Gerek xadiyê malê newûne. Şîva wan li ser êr be. Bi dizika diwin berdidin nav şîvê wan. Paşê balûg bi xa vedimirin."[1138]

Li gundê Girik, ji bo ku ji balûgan xelas bibin, berûyên çinaran di dora balûgan digerînin. Piştre wan berûyan li qeraxa cihokekê dixin binê erdê. Heta ku çinar şîn bê, dê balûg wenda bibin.

> "Em berikê çinarê diwin li dora balûgan çex dikin, paşê di ber cihokekê da dikin bin erdê. Heta ku çinar hêşin biwe balûg ê wenda biwin."[1139]

Li hin deveran ocaxa balûgê roja înê balûgan dibire. Kesê/a biocax, balûgan dijmêre û her yekê derziyekê tê re dike yan jî ji bo her balûgekê li hebek cehê dixwîne û dixe avê.

> "Balûga jî diwirin. Roja îniyê diwirin. Çend balûg hewin hewqas derziyan tê ra dikin. Hen jî çend balûg hewin hewqas hewên cehê dixin avê. Diwên, here li paş xa menihêre."[1140]

Li gundên Beêniyê, gihayê sitrîzerkê di dermankirina balûgan de tê bikaranîn. Dema ku hîn giha ter e û şîr tê de heye strîzerikê di ser re jê dikin. Şîr jê diniqute. Çend dilopan ji wî şîrî bera ser balûgan didin. Heta ku balûg jê çûne vê yekê çend caran dubare dikin.[1141]

Ji ber ku balûg nexweşîneke berbelav e, pêkanînên li ser dermankirina wê jî dewlemend in. Li herêmên din ên Tirkiyeyê

1138 Jêder: 89.
1139 Jêder: 134.
1140 Jêder: 111.
1141 Jêder: 95.

jî pêkanînên bi vî rengî hene. Wek mînak, li Çankiriyê kesê/a ku balûg li destan hatiye, diçe ber dara şîlanê. Dibêje, "*Her tişt ji Xwedê ye*" û ji wê darê guliyekî dişkîne. Guliyê ku şikandiye li ser darê dihêle. Sê caran sûreya îxlasê û carekê jî sûreya fatîhayê dixwîne. Piştre dibêje "*Ayı gördüm hoş oldum, siğillerimden boş oldum.*"[1142]

Li gorî baweriya Kurdên Qafqasyayê, sedema derketina balûgan, hejmartina stêrkên li asîmanan û kuştina beqan[1143] e. Heger dema ku hîv nû bû, bi melkesekê balûg werin paqijkirin, dê balûg bi xwe wenda bibin.[1144]

1142 Candan Torun, "*Halk Hekimliği ve Çankırı'daki Halk Hekimliği ile İlgili İnanış ve Uygulamalar*", (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Gazi Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Edebiyatı Bilim Dalı, Ankara 2002, r. 48.
Wateya hevoka Tirkî: Min hîv dît, dilxweş bûm; ji balûgên xwe pak bûm.
1143 Balkêş e, di nav Kurdên Semsûrê de jî bawerî ew e ku heger beq bêne kuştin ango bi destan werin girtin dê balûg di destên mirovan de derkevin.
1144 Nofal Shîrînov, "*Folklora Kurdên Azerbaycanê*", (Teza masterê ya çapnekirî), r. 62.

# ENCAM

Xem û xîreta ji bo jiyaneke bi aramî, tenduristî û xweparastina ji nexweşînan ji berê heta niha bûye mebesta pêşî ya mirovatiyê. Lewra, di nav hemû şaristaniyan û erdnîgariyan de hewldanên ku dişibin hevdu hene. Berî ku tib û bijîşkiya modern pêş bikeve, gel sedema gelek nexweşînan nizanibû. Ji ber vê yekê gel, "hêzên nepen" wekî sedema gelek nexweşînan destnîşan dikir. Ji bo ku van hêzan têk bibe ango bandora kêm bike, serî li rêbazên wekî nistî, sêhr, rê û resm û bikaranîna hin têkber, amûr û xurekan daye. Hewl daye ku kesên nexweş ji nav lepên wan hêzên nepen, cinên xerab xelas bike. Kesên ku xwe wekî xwedîefsûn/xwedîraz dane nasandin, bi hin rêbazên cihê piştî belavbûna ol û baweriyên yekxwedayî jî hebûna xwe domandine. Di nav civaka Îslamê de, ew kesên ku xwe wekî ocax dane nasandin, îro jî li herêmên cihê, bi navên cihê hebûna xwe didomînin.

Bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî di nav çanda Kurdan de cihekî girîng digre. Hîmê wê digihêje beriya hezar salan. Bijîşkî bi navê dermanên Kurdewarî, dermanên Kurmancî, dermanên hekîman û hwd. ji berê heta niha bi pêkanînên curbecur ji nifşekî gihîştiye nifşê din. Digel ku mijareke girîng e, li herêma Semsûrê, heta niha di vê mijarê de xebatên berfireh nehatine meşandin. Di vê xebatê de nojdarî, pêkanîn, nistî û dermankirina nexweşiyan û baweriyên girêdayî vê mijarê hatin berhevkirin, dahûrîn û nirxandin. Li gorî nexweşiyê

û pêkanînê cih û warên ku ji aliyê gel ve pîroz têne pejirandin û serdana wan tê kirin, hatine destnîşankirin. Li gorî derfetan bergên wan hatine kişandin.[1145]

Piraniya kesên ku bi wan re hevdîtin hatiye kirin di dema hevpeyvînê de li navenda Semsûrê dijiyan/dijîn. Lêbelê piraniya wan kesan demeke dirêj ya ji temenê xwe li gundan derbas kiriye. Her weha hejmareke zêde ya jêderan li herêma bajarokê Komîrê dijîn. Lewra em bi xwe ji wê herêmê ne û gelek nas û merivên me li wir in. Ji ber vê yekê gihîştina jêderan û agahiyên rast û ji dil hêsantir bû. Her weha ji ber ku herêmeke piçûk e, di nav çiya de ye û ji aliyê şaristanî û pêşveçûnê ve hinekî li paş maye pêkanînên bijîşkiya gelêrî û dermanên Kurmancî/Kurdewarî li wir hîn zindî ne.

Ji aliyê din ve di serdema xebatê de gelek pirsgirêk û astengî jî derketin pêşiya me. Gelek kesên biocax û hekîm nedixwestin ku hemû zanîn, tecrûbe û razên xwe bi me re parve bikin. Bi taybetî jêderên ku me berê hevdu nas nedikir, hin xemên wan ên takekesî hebûn. Ditirsiyan ku ew agahiyên ku dê bidin zirarekê bidin wan. Ji ber vê yekê jî gelek jêderan destûr neda ku em wêneyê wan bigrin û dengê wan tomar bikin. Bi taybetî endamên ciwan ên malbata kesên jêder bertekên mezin nîşan dan. Gelek kesên jêder bi qewlê ku em navê wan nenivîsin hin agahî dan me.

Di serdema lêgerîn û tomarkirinê de astengiyeke mezin ku derdiket pêşiya me jî parvekirina agahiyên kêm û şaş bû. Gotin û kiryarên jêderan pir li hev nedihatin. Heger yek ji sedemên vê pirsgirêka baweriyê be ya din jî nezaniya agahiyên derbarê pêkanînan de bû. Nojdariya dermanên Kurmancî/Kurdewarî jî wekî beşên din ên folklorê bi rêya çanda devkî dijî û belav dibe. Ango ji çanda nivîsê bêpar e. Lewra, yekî ji jêderan agahiyên xwe nedispêrtin berhemeke nivîskî. Jixwe gelekan ji wan jî xwendin û nivîsandina wan tunebû. Hin nexweşînên ku behsa wan dihate kirin ji holê rabûne ango îro bi navekî din têne nasîn. Gelek caran, di serdanan de em li nexweşan rast nehatin

1145 Hin ji wan bergan wekî pêvek di dawiya vê pirtûkê de hatine danîn.

da ku em nojdarî, rê û resm û pêkanînê bi çavên xwe, di cih de bibînin. Ligel kesên biocax û hekîmên Kurmancî jî hemraziya (mehremiyet) nexweş û hekîm heye. Lewra, li gorî derfetan hin pêkanîn wekî bi awayekî temsîlî hatine îcrakirin.

Du-sê jêderên ku bi Tirkî diaxivîn ne tê de, hemû jêder bi devoka Kurmancî ya Semsûrê peyivîn. Vê yekê jî carcaran pirsgirêka fêmkirinê û nivîsandinê derxist pêşiya me. Gelek caran wateyên din ên peyvan bi hev re ango di nav kevanê de hate dayîn da ku mijar û mebest were fêmkirin. Hin caran jî bi jêrenotan şîroveya peyv û komepeyvên herêmî hatin şîrovekirin.

Wekî neçariyekê, piraniya kesên ku bi wan re hevdîtin hatiye çêkirin pîr yan jî navsere ne. Kesên xwende û ciwan gelekî kêm in. Nifşên nû derbarê mijarê de "nezan" bûn. Ev yek jî nîşan dide ku nifşên nû di mijara berdewamkirina ocax û bijîşkiyê de ji ber sedemên cihê ne zêde dilxwaz in. Li gorî daneyên ber destê me bijîşkiya gelêrî ji aliyê bikaranîna riwek, kan û xurekan ve, digel agahî û zanînên nû, didome. Lêbelê saziya ocaxtiyê û bijîşkiya gelerî her ku diçe kêmtir dibe lê namire.

Li gorî zayenda jêderan mirov dikare bibêje ku piraniya hekîmên dermanên Kurmancî/Kurdewarî jin in. Di ocaxan de jin û mêr ferq nake. Ocax û bijîşkên jin, piranî nexweşên jin û zarokan derman dikin. Ocax û bijîşkên mêr, piranî bêyî ku li temenên wan binihêrin hemû mêran derman dikin. Lêbelê ji jinan -piranî- jinên navsere nojdariyê dikin. Di vê mijarê de hesasiyeta namûsê dertê holê. Hem nexweş hem jî kesê/a biocax û hekîmên dermanên Kurmancî/Kurdewarî naxwazin ku rê li ber şaşfêmkirin û şaşîtiyan vekin. Piraniya nexweşên ku serî li ocaxan didin kesên bawermend, nezan, xizan an bêçare ne. Li gorî ocaxan şertê pêşî yê xweşbûnê ango dîtina şifayê bawerkirin e. Kesê/a ku bi van nistiyan û ocaxan bawer neke jixwe şifayê nabîne.

Bandora baweriyê û bawerkirina bi ocaxan rê dide ku saziya ocaxtiyê hebûna xwe ya ji hezar salan û vir ve bidomîne. Li ku pêşketinên di qada tenduristiyê û tiba nûjen, hejmar û cureya ocaxan kêm bûye. Dîsa jî çanda ocaxan hebûna xwe û peywira

xwe didomîne. Ew ocaxên ku berê ji aliyê gel ve ji bo her cure nexweşîn û pirsgirêkên tenduristiyê serî lê dihate dayîn, îro bêtir ji aliyê kesên ku bi nojdariyên bijîşkiya nûjen çareseriyê ji pirsgirêkên xwe yên tenduristiyê re nabînin ve bi hêviya şifayê têne tercîhkirin. Lewra gelek nexweş û ocax bi van pêkanînan bawer dikin û baş dibin. Ango bawerî û derûniya baş, bandoreke erênî li ser nexweşan dike.

Piraniya kesên biocax, hêza nistî û dermankirina nexweşiyan dispêrin ber û bavikên xwe ango bi gotina wan *"Ji bav û kalan heta niha"*. Lewra bêyî ku, destûrek bê dayîn û rê resmek were lidarxistin bi awayekî "xweveber" ew ocaxa xwe didomînin. Hin ji van jî bi rêbaza destdanê biocaxî bûne û ew jî heger bixwazin dê destê xwe bidin endamekî/e malê ango kesekî/e xerîb lê dilxwaz. Di vê rêbazê de kesê/a ku dixwaze destê xwe bide kesekî/e din bi hin rê û resmên wekî tifkirina dev, vexwartina ava ku kesê/a ocax tû kiriye, pifkirin, diakirin ango mistdana piştê destê xwe dide kesekî/e din. Hin kes, bi rêya xewnan dibin ocax. Kesên weha biocaxîbûna xwe dispêrin xewnên xwe. Li gorî gotinên wan kesên weha di xewna xwe de ji *"Qencekî Xwedê"* yê wekî Xoceyê Xizir, şêx, dede, pîr, ewliya û hwd. dest werdigrin û ji wê rojê û pê ve dibin ocax û nexweşînan derman dikin û nistiyan li wan dikin. Hin kes, piştî ku nexweşiyekê derbas dikin dibin ocax. Hin kes jî bi rêya çavdêrî û şagirtiyê dibin ocax ango hekîmê/a gelêrî.

Piraniya hekîmên dermanên Kurmancî/Kurdewarî, jinên nexwende û bê pîşe ne ango kebanî/bermaliya malê ne. Jinên ku li gund dijîn, ji bilî bermalîbûnê bi kar û barê xwedîkirina sewalan û çandiniyê re jî mijûl dibin. Di bijîşkiya gelêrî û çanda ocaxtiyê de mêr, bi kar û barên curbecur ve mijûl dibin. Kêm kes karekî memurtiyê dikin ango ji karekî malnişîn bûne. Piraniya wan heger li gund be bi çandiniyê û sewalvaniyê; heger li navenda bajêr be bi bazirganiyê û karkeriyê debara xwe dikin. Di dema nojdarî û dermankirina nexweşiyan de rêbazên mistdan, palikandin, nistî, pifkirin, tûkirin, vexwartina avê, xêzkirin, pîvan, zivirîn, razan, helandina qurşûnê, xwarin û vexwarina

xurekan têne bikaranîn.

Di nexweşînên xuyayî (fîzîkî) de piranî riwek û xurek; di nexweşînên rihî û hestiyarî de piranî, rê û resmên wekî şûştin, xweşûştin; nistiyên wekî mistdanê, pifkirinê, tûkirinê û hwd. têne bikaranîn. Xurek û riwekên wekî pîvaz, sîr, nan, hêjîr, bastêq, dims, mewîj, benîştê daran, xwê, şîrê keran, şîr, mast, şekir, ava kaniyan, ava bîran, ava ku lê hatiye xwendin, ava tirş (îçme-soda), avgerm, qaşilê pîvazan, ceh, genim, hilû, tû, balicanê sor, hingûv, şima, hêk, ava balicanan, gûz û hwd. têne bikaranîn. Riwek û giyayên wekî pelê çinaran, tolik, mazî, berû, toximê melkesan, melkes, talik, karî, heftûzk, gurnîg, hine, titûn, botav, ûzalik, çaya çiyê û hwd. têne bikaranîn. Ajalên wekî, mar, kîso, jûjî, şeytanok, zîro, masî û hwd.; amûrên wekî das, kêr, derzî, sing, paçik, qirş û qal, qaşilê daran, ta, şûjin, sabûn, pereyê hesinî, gulle, ben, kitan, şarpe, eba, nivişt, bêjing, rêx, bişqul, ax, xwelî (arî), tenî, şînmorik, tevir, bizmar, bardax, cilêt/ gûzan, dep, goztaşî, kespik, nal û hwd. têne bikaranîn. Li gorî pêdiviyê çend amûr, xurek û riwek bi hev re jî têne bikaranîn.

Di bijîşkiya gelêrî ya herêma Kurdî de baweriya bi êrikan-ziyaretan, daran, kanî, gol û keviran cihekî girîng digre. Ev yek ji bo herêma Semsûrê jî weha ye. Êrikê Henarê (dareke hinarê ye), Çinarê Şêxbor, Çinarê Golgol, Dargir (dareke berûya ye); Kaniya Ta, Kaniya Tewixanê, Golgol (newaleke bi av e; di nav de çend golên di ser hev re hene); Kevirê Kuxikê, Pêka Dundilê (kevirek e) hin ji wan in. Ew mînak jî diyar dikin ku hin baweriyên berê û eleqeya wan bi Îslamê tuneye îro jî di bin navê Îslamê de hebûna xwe didomînin.

# JÊDER

1. ABUKAN Bilge, YILDIRIM, Filiz, "Toplumsal Cinsiyet Temelli Şiddetin Bir Biçimi Olarak Erken Evlilikleri Önlemek İçin Kadınların Güçlendirilmesi", *Uluslararası Sosyal Araştırmalar Dergisi,* 10 (53): 428.

2. ACAR, H. Volkan, "Moğollardan Anadolu'ya Bir Halk Hekimliği Tedavi Yöntemi: Deriye Çekme", *Lokman Hekim Dergisi,* 2018; 8 (1): 33-46.

3. ACIPAYAMLI, Orhan, "Anadolu'da Nazar ile İlgili Bazı Adet ve İnanmalar", *Ankara Üniversitesi Dil ve Tarih Coğrafya Fakültesi Dergisi,* 1962; 20 (1-2), r. 1-40.

4. ACIPAYAMLI, Orhan, *Türkiye'de Doğumla İlgili İnanmaların Etimolojik Etüdü,* Türk Tarih Kurumu Basımevi, Ankara 1961.

5. AĞIRAKÇA, Ahmet, İslam Tıp Tarihi Başlangıçtan VII.-XIII. Yüzyıla Kadar, Akdem Yayınları, İstanbul 2016.

6. AKBULUT, Gülpınar,"Türk Kültüründe Toprak Yeme Alışkanlığı (Jeofaji): Arguvan'dan Örnek Bir Çalışma", *ACTA TURCICA Çevrimiçi Tematik Türkoloji Dergisi,* 2012; 4 (1), r. 302-315.

7. AKGÜN, Engin, "Şamanist Türk Halklarında Kurban Sungusu ve Kendisine Kurban Sunulan Varlıklar", Beykent Üniversitesi *Sosyal Bilimler Dergisi,* 2007; 1 (2), r. 139-153.

8. AKMAN, Eyüp "Türk Halk Hekimliğinde Ocaklık Geleneği ve Safranbolu'daki Ocaklar", *Kastamonu Eğitim Dergisi,* 2007; 15 (1), r. 393-400.

9. AKPINAR, Turgut, *Türk Tarihinde İslamiyet,* İletişim Yayınları, İstanbul 1994.

10. AKTAŞ, Ümit, *Bitkisel Kürlerle İlaçsız Tedavi,* Hayy Kitap, 5. Baskı, İstanbul 2016.

11. ALAKOM, Rohat, *Jinên Kurd,* APEC, Sweden 1995, r. 20.

12. ALBAYRAK, Nurettin, *Halk Edebiyatı Kapsamı-Biçimi ve Tür Özellikleri-Literatürü*, Kapı Yayınları, İstanbul 2012.

13. ALİSBAH TUSKAN, Aydeniz, "Toplumsal Cinsiyet Toplumda Kadına Biçilen Roller ve Çözümleri", *Türkiye Barolar Birliği Dergisi*, 2002; 25 (99), r. 446-447.

14. ALTUN, Ahmet, *Adıyaman'da Kutsal Mekânlar: Zerban û Qazxan Ziyaretleri/ Li Semsûrê Cihên Pîroz Du Mînak: Ziyaretên Zerban û Qazxan*, (Projeya Lîsansa Bilind ya Çapnebûyî) Zanîngeha Mardîn Artuklu Enstitûya Zimanên Zindî yên li Tirkiyeyê Şaxa Makezanista Ziman û Çanda Kurdî, Mêrdîn 2017.

15. ALTUN, Erman, *Türk Halkbilimi*, Karahan Kitabevi, Adana 2011.

16. ALTUNEL, Mesude, "Namus", *Ankara Barosu Dergisi*, 2012; 1, r. 213-217.

17. AMOS, Dan Ben, "Folkloru Tanımlamak", Dilara Koçbaş (Çev.), *Dans Müzik Kültür Folklora Doğru Çeviri Araştırma Dergisi*, 2002; r. 1-18.

18. ANDREWS, Peter Alford, *Türkiye'de Etnik Gruplar*, Ant Yayınları, İstanbul 1992.

19. ARSLAN, Akif, ÇETİNKAYA, Şahin, TAŞBAŞI, Abdullah, "Türk Kültürü Bağlamında Ağrı İli Alkarısı İnanmaları", *Milli Eğitim*, 2016; 212, r. 201-210.

20. ARSLAN, Miray, ŞAHANE, Bilge Sözen, Sevgi Şar, "Dünya'daki Geleneksel Tedavi Sistemlerinden Örnekler: Genel Bir Bakış", *Lokman Hekim Dergisi*, 2016; 6 (3), r. 100-105.

*21. Asoy Folklorî Kurd*, Wezaretî Roşinbîrî Kurdistan, Hewlêr/Iraq, 2006.

22. ATEŞ, Fatma, *Adana Halk Hekimliğinde Ocak Kültü*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Gazi Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Edebiyatı Bilim Dalı, Ankara. 2015.

23. ATİLLA, Sema, "Kronik ve Dejeneratif Hastalıklarda Beslenme", *Halk Sağlığı Temel Bilgiler* (818-827), Hacettepe Üniversitesi Yayınları, Ankara 2006.

24. ATMACA, Gül, "Folklora Doğru Dergisi (1969-2011)", *Atatürk Üniversitesi Sosyal Bilimler Dergisi*, 2013; 51, r. 295-301.

25. AYDIN AVCI, İlknur, *Enfeksiyon Hastalıkları*, Göktuğ Yayınevi, Amasya 2007.

26. AYDIN, Okan, BARAN, Gülen, "Toplumsal Değişme Sürecinde Evlenme ve Boşanma", *Toplum ve Sosyal Hizmet*, 2010; C. 21, r. 2, r. 117-127.

27. AYDINER, Mustafa, Şifalı Bitkiler Ansiklopedisi, 5. Baskı, Metropol Yayınları, İstanbul 2014.

28. AYDINLI, Abdullah, "Ebû Zer el Gıffârî", *TDV İslam Ansiklopedisi*, Türkiye Diyanet Vakfı Yayınları, İstanbul 1994, C. 10, r. 256-269.

29. BAHTİŞÛ, İbn, *Tıp Sanatı ve Nefsin Halleri*, Abdülkadir Coşkun (Çev.), Litera Yay., İstanbul 2014.

30. BARAN, Bahoz, "Baweriyên Gel", *Folklora Kurdan*, 2016, 7, r. 69-70.

31. BARDAKOĞLU, Ali, "Kurban", *Türkiye Diyanet Vakfı İslam Ansiklopedisi*, TDV Yay., İstanbul 2002, C. 26, r. 433-435.

32. BASCOM, William, "Mit-Ritüel Teori", Selcan Gürçayır (Çev.), *Halkbiliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 3*, (r. 189-216), Geleneksel Yay., Ankara 2009.

33. BAŞAL, Handan Asûde, "Türkiye'de Doğum Öncesi, Doğum ve Doğum Sonrası Çocuk Gelişimi ve Eğitimine İlişkin Gelenek, Görenek ve İnançlar", *Uludağ Üniversitesi Eğitim Fakültesi Dergisi*, 2006; XIX (1), r. 45-70

34. BAŞÇETİNÇELİK, Ayşe, *Adana Halk Kültüründe Doğum, Evlenme, Ölüm*, Adana Büyükşehir Belediyesi Yayınları, Adana 2009, r. 80-115.

35. BAYEZÎDÎ, Mela Mehmûdê, *Adat û Rusûmatnameê Ekradiye*, Jan Dost (Amdekar), Weşanên Nûbihar, Çapa 2. Stenbol 2012.

36. BAYRAK, Papatya, "Besin Alerjileri", *Sağlıkta Birikim Dergisi*, 2006; 1 (1), r. 111-121.

37. BAYSAN, Münire, "Kütahya ve Çevresinde Sağaltma Ocakları ve Yapılan Tedaviler", *Dumlupınar Üniversitesi Sosyal Bilimler Dergisi*, 2014, r. 77-84.

38. BAYSAN, Münire, *"Kütahya ve Yakın Çevresinde Halk Hekimliği ile Ocak Kültü"*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Uludağ Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Bursa 2016.

39. BEDİRXAN, Celadet Ali, *Hawar*, Mihemed Bekir (Amadekar), Sweden 1987.

40. BEKKİ, Selahaddin, "Türk Mitolojisinde Kurban", *Akademik Araştırmalar*, 1996; 1 (3), r. 16-28.

41. BEYDİLİ, Celal, *Türk Mitolojisi Mitolojik Sözlük*, Yurt Kitap Yayın, Ankara, 2003.

42. BITLÎSÎ, Kurdiyê (Halil Hayali), "Kürdçeye Dair", *Jîn*, 15, M. Emin Bozarslan (Amadekar), Deng Yayınevi, İsveç 1985.

43. BİLGEN SİVRİ, Birsen, KARATAŞ, Nimet, "Toplumun Kültürel Yönü: Doğum Sonu Dönemde Anne ve Bebek Bakımına Yönelik Yapılan Geleneksel Uygulamalar ve Dünyadan Örnekler", *Güncel Pediatri Dergisi*, 2015; 13, r. 183-193.

44. BORATAV, Pertev Naili, *100 Soruda Türk Folkloru*. Gerçek Yayınevi, İstanbul 1994.

45. BOREKAYÎ, Sadiq Seffzade, *Tebbê der Miyanê Kordha*, Çapxaneya Ataî, Tehran 1982.

46. BÖLÜKBAŞ, Nurgül, ERBİL, Nülüfer, ALTUNBAŞ, Hanife, ARSLAN, Zehra, "0–12 Aylık Bebeği Olan Annelerin Çocuk Bakımında Başvurdukları Geleneksel Uygulamalar", *Uluslararası İnsan Bilimleri Dergisi*, 2009; 6 (1), r. 164-176.

47. BÜLBÜL, Mikail, BÜLBÜL, İsrafil, *Anamneza Bi Kurmancî*- Kürtçe Anamnez, Diyarbakır Tabip Odası Yayınları, 3. Baskı, Diyarbakır 2011.

48. CANATAN, Kadir, YILDIRIM, Ergün, *Aile Sosyolojisi*, Açılım Kitap, 2. Baskı, İstanbul 2011.

49. CEWERÎ, Fırat (Amadekar), *Hawar 1 (1-23), Hawar 2 (24-57)*, Weş. Nûdem, Stockholm 1998.

50. CINDÎ, Heciyê, EVDAL, Emînê, *Folklora Kurmanca*, Weş. Avesta, Stenbol 2008.

51. CİGERXWÎN, *Folklora Kurdî*, Weşanên Roja Nû: 25, Stockholm/Sweden 1988.

52. ÇAKMUR, Hülya, "Çocuklukta Enfeksiyöz Diyare ve Dehidratasyon", *Kafkas J Med Sci* 2013; 3 (2), r. 96-102.

53. ÇEK, Songül, *1913-1938 Yılları Arası Türk Halkbilimi Tarihçesi*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Hacettepe Üniversitesi Sosyal Bilimler enstitüsü Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Türk Halkbilimi Bilim Dalı, Ankara, 2002.

54. ÇETİN, Nuran, *"Adıyaman İli ve Çevresindeki Manevi Halk İnançlarının Dinler Tarihi Açısından Değerlendirilmesi"*, Selçuk Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Felsefe ve Din Bilimleri Anabilim Dalı Dinler Tarihi Bilim Dalı, Konya 2007.

55. ÇETİN, Ökkeş, *"Gaziantep İli Oğuzeli İlçesi Halk İnançları"*, Niğde Üniversitesi Eğitim Bilimleri Enstitüsü İlköğretim Ana Bilim Dalı Sosyal Bilgiler Öğretimi Bilim Dalı, Niğde 2017.

56. ÇEVİK, Bülent, *"Konya'da Halk Hekimliği Uygulamalarının Dünü ve Bugünü"*, Cumhuriyet Üniversitesi SBE, Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı Halk Bilimi (Folklor) Bilim Dalı, Sivas 2008.

57. ÇEVİKCAN, Betül, KARA, Sadık, "Bel Fıtığı Hastalığı Bulunan Bireylerin Bel ve Karın Kası Fonksiyonlarının Elektromyografik Analizi", *Elektrik-Elektronik-Bilgisayar Mühendisliği 12. Ulusal Kongresi ve Fuarı Bildirileri*, Eskişehir 2017.

58. ÇEVİRME, Hülya, SAYAN, Ayşe, "Alkarısı İnanmaları ve Bilim", *Millî Folklor*, 2005; 65, r. 67-72.

59. ÇİFÇİ, Tekin, *Kilam û Jin*, Weş. Nûbihar, Çapa 2., İstanbul 2017.

60. ÇİFÇİ, Tekin; DEMİR Halit, «Mardin İli Geleneksel Halk Hekimliğinde Yanık Uygulamaları", *İSPEC Journal of Social Sciences & Humanities*, Year 4/ 2020, Volume-4, Issue-4, (pp. 285-295.) doi.org/10.46291/ISPECIJSSHvol4iss4pp285-295.

61. ÇOBANOĞLU, Özkul, *Halkbilimi Kuramları ve Araştırma Yöntemleri Tarihine Giriş*, Akçağ Yayınları, 6. Baskı, Ankara 2012.

62. ÇOBANOĞLU, Özkul, *Türk Halk Kültüründe Memoratlar ve Halk İnançları*, Akçağ Yayınları, Ankara 2003.

63. ÇORUHLU, Yaşar, *Türk Mitolojisinin Anahatları*, Kabalcı Yayınevi, İstanbul 2002.

64. DAĞLARAŞAR, Emine Dilek, *"Besni Halk Kültürü Araştırması"*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Çukurova Üniversitesi SBE Türk Dili ve Edebiyatı Anabilim Dalı, Adana 2002.

65. DARÊ, Meçoyê, "Edetên Zewac û Dawetê", *Bîrnebûn*, 1997; 2, r. 86-94.

66. DEĞER, Vasfiye Bayram, DEVECİ, Erhan, *Kadınların Doğum Sonrası Uyguladıkları Geleneksel Yöntemler*, Mardin Artuklu Üniversitesi Yayınları, Mardin 2018.

67. DEMİR, Özkan, BAKAR, Nur, "Silifke Yörüklerinde Doğum, Evlenme ve Ölüm Gelenekleri Üzerine Bir Araştırma", *Türkiyat Araştırmaları Dergisi*, 2014; 35, r. 127.

68. DEMİRHAN ERDEMİR, Ayşegül "Kına'nın Türk Tıbbi Folklorundaki Yeri", *III. Milletlerarası Türk Folklor Kongresi Bildirileri, IV. Cilt, Gelenek, Görenek, İnançlar*, Başbakanlık Basımevi, Ankara 1987, r. 155-159.

69. DENİZ, Dilşa Yol/ Rê: *Dersim İnanç Sembolizmi*, İletişim Yayınları, İstanbul 2012.

70. DEVECİ, Serap, *Ortaçağ'da Besni'nin Siyasi, Ekonomik ve Sosyo-Kültürel Durumu*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Harran Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Tarih Anabilim Dalı Tarih Bilim Dalı, Şanlıurfa 2007.

71. DOĞAN, Şaban, "XIV.-XV. Yüzyıl Türkçe Tıp Metinlerinde Halk Hekimliği İzleri", *Millî Folklor*, 2011; 23 (89), r. 120-132.

72. DORSON, Richard M., *Folklor û Teoriyên Folklorê yên Îroyîn*, Necat Keskin (Wergêr), Weş. Avesta, Stenbol 2017.

73. DUMAN, Rahmi, DUMAN, Reşit, *Göz Kapağı ve Hastalıkları*, Derman

Tıbbi Yayıncılık, Ankara 2015.

74. DUNDES, Alan, "Folklor Nedir?", Gülay Aydın (Çev.), *Halk Biliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 2*, Geleneksel Yayıncılık, 2. Baskı, Ankara 2010.

75. DUNDES, Alan, "Halk kimdir?", Metin Ekici (Çev.), *Halk Biliminde Kuramlar ve Yaklaşımlar 1*, Geleneksel Yayıncılık, Ankara 2006.

76. DUVARCI, Ayşe "Halk Hekimliğinde Ocaklar", *Millî Folklor*, 1990; 2, r. 34-38.

77. ELİADE, Mircea, *Kutsal ve Din Dışı*, çev: Mehmet Ali Kılıçbay, Gece Kitapları, Ankara 1991.

78. EFŞAR, Muhammed, VEFAİNEYAD, Said, ŞADİ, Mihri, KADİRİ, Rıza, "Giyahan-ı daruyi-i Muessır Der i Hıyam-ı Zehmha-yı Suhtegi Der Flor-i gıyah-ı İran", *Mecelle-yi İlmi-yi Danişgah-ı Ulum-u pizişki-yi Gürgan*, Payîz 1396; 3, r. 1-14.

79. EKİCİ, Metin, *Halk Bilgisi (Folklor) Derleme ve İnceleme Yöntemleri*, Geleneksel Yayıncılık, Ankara 2007.

80. EKİZ, Halil Hamdi, ASLANGİL, *Halit Cevri, Kalecik'in Tarihi Dünü Bugünü İçin Bir Araştırma*, Ankara, Kalecik Kültür Derneği Yayınları, Ankara, 1995.

81. EL CEVZİYYE, İbn Kayyim, *Tıbb-ı Nebevi, Peygamber Efendimizin Sağlık Öğütleri*, Yusuf Ertuğrul (Çev.), Hikmet Yayınları, İstanbul 2004.

82. ELİADE, Mircea, *Dinler Tarihi (İnançlar ve İbadetlerin Morfolojisi)*, Mustafa Ünal (Çev.), Serkat Kitabevi, Konya 2005.

83. ELİADE, Mircea, *Ebedi Dönüş Mitosu*, Ümit Altuğ (Çev.), İmge Kitabevi, İstanbul 1994.

84. EMEN, Huriye "Gazipaşa'daki Geçiş Dönemi ve Halk Hekimliği Pratiklerinde Orta Asya Türk Kültürü ve İnanç Sisteminin Tesirleri", *Türk Dünyası İncelemeleri Dergisi*, 2015; 15 (1), r. 29-43.

*85. Enfeksiyondan Korunma*, Pnömönü (Zatürre), 2017.

86. ER, Melek, "Çocuk, hastalık, anne-babalar ve kardeşler", Çocuk Sağlığı ve Hastalıkları Dergisi, 2006; 49, r. 155-168.

87. ERDİÇ, Şaban, "Bir İnşa Süreci Olarak Fenomenolojik Perspektifte Kutsal ve Kutsallaşma: Ziyaret Fenomeni Örneği", *Millî Folklor*, 2017; 29 (114), r. 39-51.

88. ERDOĞAN, Haşim, *20. Yüzyılın İlk Yarısında Türkiye'deki Süryaniler*, (Yayınlanmamış Doktora Tezi), Erciyes Üniversitesi Sosyal Bilimler Enstitüsü Tarih Anabilim Dalı Türkiye Cumhuriyeti Tarihi Bilim Dalı, Kayseri 2013.

89. ERDOĞAN, Umut, "Bolu Yöresinde Doğum Sonrası Törenler: Bebek Kırklama, Kırk Basma Külü Geleneği, Alkarısı İnancı ve Kırk Mevlidi". *IV. Uluslararası Bolu Halk Kültürü ve Köroğlu Sempozyumu Bildirileri*, Ankara, Akçağ Yayınları, 2015, r. 224-250.

90. EROĞLU, Ahmet Hikmet, "Geçiş Dönemleri ile İlgili İnanışlar", *Halk İnanışları El Kitabı*, Grafiker Yayınları, Ankara 2017.

91. ERSOY, Ruhi "Modernizm-Postmodernizm Bağlamında Geleneksel Tıp Uygulamalarının Güncelliği Üzerine Bir Değerlendirme", *Millî Folklor*, 2014; 26 (101): 182-192.

92. EVREN, Bilge, EVREN, Cüneyt, YAPICI, Aslıhan, HOŞAFÇI GÜLER, Mine, "Fibromyalji Hastalarında Ağrı Şiddeti ile Psikiyatrik Belirtiler Arasındaki İlişki", *Anadolu Psikiyatri Dergisi*, 2005; 6, r. 69-74.

93. EZBERCİ, Fikret, *YÜZBAŞIOĞLU, Fatih*, "Hemoroidal Hastalıkta Tedavi Yöntemleri", *Türkiye Klinikleri J Med Sci*, 2008; 28, r. 182-192.

94. FARQÎNÎ, Zana, *Ferhenga Kurdî-Tirkî*, Weş. Enstitûya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 2004.

95. FIRAT Mehmet, *Ferhenga Navên Riwekan Bi Kurdî* (Kürtçe Bitki Adları Sözlüğü), Weş. Sîtav, Van 2013.

96. FRAZER, James G., *Altın Dal Dinin ve Folklorun Kökenleri*, Mehmet H. Doğan (Çev.), Payel Yayınevi, 2. Basım, İstanbul 2004.

97. FURKAN, Merve Kevser, *Adıyaman İlinde Yetişen Bazı Bitkilerin Etnobotanik Özellikleri*, (Yayınlanmamış Yüksek Lisans Tezi), Adıyaman Üniversitesi Fen Bilimleri Enstitüsü Biyoloji Anabilim Dalı, Adıyaman 2016.

98. FURUSAWA, Takuro, "The Rules of Western Biomedicine and Folk Medicine in Rural Solomon Islands: A Quantitative Analysis of Villagers'Response to İlness", *Tropical Medicine and Health*, 2006; 34 (2): pp. 83-91.

99. GAZÎ, Mustafa, "Bawerİyên Batil", *Folklora Kurdan*, 2015, 1 (1): 55-56.

100. GAZÎ, Mustafa, BENGİN, Ahmed, *Baweriyên Batil ên Kurdan*, Weş. Do, Stenbol 2006.

101. GEZGİN, Deniz, *Bitki Mitosları*, Sel Yayıncılık, 2. Baskı, İstanbul 2010.

102. GÖKALP, Saadet ve ark., "Erişkin ve Yaşlılarda Ağız-Diş Sağlığı Profili Türkiye-2004", *Hacettepe Dişhekimliği Fakültesi Dergisi*, 2007; 31 (4): 17-18.

103. GOLDSTEIN, Kenneth S., *Sahada Folklor Derleme Yöntemleri*, Ahmet E. Uysal (Çev.), Kültür ve Turizm Bakanlığı Milli Folklor Araştırma Dairesi Yayınları, Ankara 1983.

104. GÖKDENİZ, Ömer Faruk, *262 Numaralı Hısn-I Mansûr (Adıyaman) Kadı Sicilinin Transkripsiyonu ve Değerlendirilmesi*, (Yayınlanmamış Yüksek

